Sal 1 — Hejmar 1

Duşemb 3 Gulan 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## MERHELE

Di jiyîna miletan de merheleyin hene û miletê ko dixwaze bigehe tekûzî û medeniyetê û wan li xwe bike, jê ra divêt bide reya wan merhelan û bi wan ra derbas bibe.

Gelo miletê Kurd daye pey wan merhelan û heke daye îro gihaştiye kêjanê.

Delêletên heno ko miletê me berê xwe daye vê reyê û bi gavine giran, bi gavine giraniyê tê re diçe.

Heye ko hon bibêjin ji miletê me re, ji miletekî bişûndemayî re, ne g a v i n e giraniyê lê gavên çargaviyê gerek in, da ko ew xwe di ser marhelan re zer bike û rojkê berî rojekê xwe bigehêne miletên ko di vê bezê de, jê derketine û ew bi şûn de hiştine û ji ber vê bişûndemayînê miletê me bindestiya wan dike û em bûne rajorên wî. Heke we holê got em jî bi we re ne. Lê ev, tiştê gerek e û tiştê gerek xwerû daxwaz e; û ne tiştê destxistî ye.

### DAXWAZ Û TIŞTÊ HAZIR

Belê daxwaz ev e, lê tiştê hazir û mewcûd bi awakî din e û silaw li sifra hazir e. Berî sê sed salî Ehmedê Xanî nav di miletê xwe dida û digot:

Enwa'i milel xudan kitêb in
Kurmanc bi tenê di bê hesêb in.

Herçî Evdilqadirê Koyî, di pey Xanî re û berî 50-60 salî, gava temaşa dinyayê dikir û didît ko her tiştên dinyayê guhêrîne û ji xwendinê re jî awayine nû çêbûne û bi tenê, bi xwendina medresan berê Kurdan naçe şerî; dinalî û digot:

Le dewrî ême roman û cerîde
Egerçi meqsed e zimanî baw e.

Belê Xanî digot «Bixwînin»; Koyî li gora wextê xwe, bi ser ve zêde dikir û digot: «Bi awayê nû bixwînin». Lê me ne xwend, gelo çire? Ji ber ko mezin û bîrewerên kurdan menfehetên xwe ên şexsî di ser menfeheta milet re girtine; ev miletê belengaz wek kerîkî pez dane ber xwe, ew dotine, ji şîrê wî rûn û mast û penîr, ji hiriya wî xeftanine teylesan çêkirine. Xwedê gunehên wan bixefirîne. Tiştê ko yar û mezinên me kiriye ev e. Lê rojekê derba neyaran em hişyar kirin. Bi vê derbê me bîra her tiştî bir. Me zanî ko xweseriya me, di zimanê me de ye û em bi tenê bi hînbûna xwendin û nivîsandina zimanê xwe û bi parastina wî, di civata miletan de, wek miletekî xweser dikarin bijîn û payedar bibin. An ne em ji dara heyîna miletên çarnikar re dibin xuşkî, di rayên wî de digerin û wê xurt dikin. Ji ber ko em bi xesletên xwe ên tebîî ji wan xurtir, zeximtir û paqijtir in. Şûr bi qenciya folayê xwe dibire û diçirise. Lê fola tê de winda ye; nav navê şûr û yê xwediyê wî ye.

Belê, me her tişt bîr biriye û îro gava em li hev digehin hev, bi ax û nalîn, ji hev û du re dibêjin:

«Bavo! li dinyayê ji me kêmtir kes ne maye. Heçî milet hene tev de bûne dewlet û hikûmet, xudan kitêb û dibistan. Bi tenê em, miletê kurd; bi şûn da mane; reben, feqîr, nezan, belengaz, di destên xelkê de lehîstok. Xelkê hevsara me kiriye destê xwe, li gora kêf û menfeheta xwe berê me jî bakur dide nîvro, ji roavê dide rohelê. Ji lewre divêt em jî bixebitin xelkê xwe hînî xwendin û nivîsandinê bikin, vî miletê belengaz ji tarîtiyê xelas bikin, berê wî bidin tav û ronahiyê.

Li ser vê gotinê jî em yek in. Lê . . .

### KIRIN Û GOTIN:

Lebelê, ji ber ko kirin û gotin ne birayên hev in, di dema kirinê de; destekî xedar me ji hev dike. Wextê gotinê ye. Em sed peyan in. Di gotinê de em ji hev derdikevin. (li rûpela diwemîn binêrin)

## FRENSA U CIVATA MILETAN

Frensê xwe ji civata Miletan bisûnda ne kişandiye.

Londre —: A. F. I. Sermiyanê Frensa Şerevanî General De Gol bi navê xwe û li ser Zimanê General Jîro, ji civata Miletan re, li Jenevê da zanîn ko Frensê xwe ji vê Civatê bi şûnda ne kişandiye û mîna berê lebata civata Miletan e.

## BOMBARDIMANA ESSENÊ

Stokholm:— R. Rêwingiyên ko bajarê Essenê, piştî bombardimanên refên brîtanî bi çavê xwe dîtine, qise dikin û dibêjin: Essen ew şaristana elemanî a mezin, êdi ne bajar lê kavil û xerabezarek e, û xesarên ko gihane wî, ji yên ko berî bi sê salan giha bûn Londrê, bi deh caran bêtir in.

Elemana di nav avahiyên febrîqan de dîwarine stûr çêkiri bûn, da ko der dema bombardimanan, avahî hemî bi hev re me kevin perîşaniyê; le belê ew bedenên stûr, di bin xurtiya teqandina bombeyine mezin, her yekê ji wan dû hezar û çar hezar kîlo giran, mîna pelên daran weşiyane, Îro ji karxaneyên Essenê ên mezin û bilind, bi şûndemayî binyadên dîwaran û kavil û xirban e.

Ev mehek e di Essenê de kar û xebat sekiniye. Kes na şixule û nîvê xelken vê şaristanê, dev ji mal û milkê xwe ji kar û destxetên xwe berdane û ketine riya mihaciriyê. Bombayên brîtanî koka her du stasyonên Essenê jî rakirine.

Piştî bombardimana vî bajarî, bi tometa anîna talanê xelkê 4 xebatkerên elemanî û pênc ji yên biyanî, hatine bi dar ve kirin. Du rencberên elemanî yên ko çavtirsiyandî bû bûn û ne dixwestin dest bi paqijqirina xirbeyan bikin hatine mirandin.

Ji dikanên vî bajarî 500 heb hilweşiyane û zad û zixîreyên tê de xira bûne. Niho di Essenê de ji esker û peyayên ko bi emrê hikumetê avahiyên xesarditî hildiweşînin û dikin ava bikin pê ve kes ne maye.

## CIHABA BRITANYA MEZIN

Londre —: R. Hikûmeta Brîtanî duhî bi avakî resmî da zanîn: Li gora raporên ko digehin hikûmeta Brîtanya Mezin, eleman haziriya xwe dikin û di eniya Şerê Rûsî de, bi gazên jehrîn emel bikin. Heke elemana ev tişt kir, diwê ew bizanin ko hervekî serekwezîrê britanî Mr. Çorcil elam da bû, qiwetên Hevalbenda di bombardimanên qerargehên eskerî, merkezên febriqeyên çek û posatên şerî û bender û hejagehan de û hema, bi vê gazê dê emel bikin.

## Ordiya azahi û serbestiyê

Cezayir.—: A. F. I. Radyoa Cezayirê duhî êvarê elam dida:

Leşkerên frensezî yên Ordiya Azahî û serbestiyê a mezin berê xwe daye Tûnis û Bizertê û pêş ve dikeve. Yekîniyên dijmina ê dawîn wextekî nîzing de, ji erdê Efriqayê dê bêne qewirandin. Armanca yekemîn Ewripa ye. Hevalbenda nîzîkî Ewripayê dibin û ala felat û serbestiyê bi xwe re tînin.

### DESTGEHÊN EMERÎQANÎ 1265 WAPOR ÇÊKIRINE

Nû-York—R: Destgehen emerîqanî ji destpêka şerî û heta niha 1265 waporên bar û eskerkêş çêkirine.

Londre—R: Refên brîtanî bê etlahî dirêjî erdê germanistanê dikin û bajarên elemanî ên têr destgeh û febrîqan didin ber bomban û li hêjagehên eskerî dixin.

Di nav wan rejên dawin de, 600 bombeavêjên brîtanî dirêjî karxaneyên Skodayê kirine û 150,000 kîlo bombe avêtine wan febriqan yên ko li ser hisabê elemana tang, topên mezin, gule, otomobîlên zirhkirî, balafir û motorên gir û hûr çê dikin. Di febrîkêyên Skodayê de 55,000 peya dixebitin.

## D U R I K

Dûrikên li ber tenbûrê

MAM DELALÊ

Çi şikefta dev mezinê
Jê reviya refek jinê
Çavê min li a mezinê.

Çi şikefta dev li hewa
Jê firiya refek kewa
Çavê min li a bedewa.

Çi şikefta dev biçûk e
Jê firiya refek bûk e
Çavê min li a biçûk e.

Sibe bû, min karek ne kir
Destê lêwik qipçe kir
Sê siwara xuyayî kir

Min go siwarino hon kî ne?
Go xwakê em xerîbî ne
Xwakê em rêwî ne.

## D I L O

Lo dilo! Hey lo dilo!
Xelkê me çû bûn çilo
Dinya hemî zewicî
Ez û gewrê man wilo.

Sîng û berê te gewr in
Mîna dimis û firo
Li ser destê xwe kiro
Mîrê Bota re biro.

Lo dilo! Hey lo dilo!
Agir ket sênca reza
Keti bû bexcê gula
Ezê biçeplê te bigrim
Bavêjim taxa fila.

## E D L Ê

Edlê rabe sibe ye
Dengê dîkan çebe ye
Çax, çaxê min û te ye
Çaxê nimêja te ye

Hey lê, gidyê Edlayê
Bê sozê, sozwindayê
Malê dinyê hindikê
Qelena gewra min nayê

Sibe bû, dîka qîr kir
Cotkariya nîr li pî kir
Rêka şkeftê d' nîvî kir
Sînga gewrê sipî kir.

Heylê gidiyê Edlayê
Min sozek bi te re dayê
Ez tu car na dim terkayê
Heta bi axa merzela
Heta bi kêlê kevirê
Bi şingîna bêrê hesinî

Mala Edlê li neqebê
Lê hat bakî xezebê
Kul li Edlê giran bû
Da ser derdê kezebê

Mala Edlê li jor e
Dergûşê lor e lor e
Hêvî ma rebê jor e
Ezê bi çeplê te bigrim
Bavêm welatê jor e.

Dê Edlê! rabe, rabe
Dil ketîçare nabe
Kes li malê tu ne ye
Kêf, kêfa min û te ye!

**MAMIK**: Av e, ne av e, marê mirî di nav e, teyrê zêrîn hindav e. Qesra spî bê derî.

# DEMA DAWIN

Londre—R: Emîraliya brîtanî dide zanîn: Noqavên brîtanî di Behra Spî de ji nû ve 21 vaporên Mihwerê bin av kirine; û xesar gihandine heft hebên din.

Londre—R: Refên Brîtanî torpîl reşandine behrên dijminan.

Londre—R: Di eniya şerê Tûnisê de pêşveçûna leşkerên hevalbendan dom dike: her çend jî qiwetên Mihwerê berêrî;an dikin.

## DI ENIYA TUNISÊ DE

Londre : — R. Di eniya Tûnisê de qiwetên, Mihwerê şerên xwe ên dawîn dikin; şerine bê hêvî û niyaz. Ordiyên Brîtanî, leşkerên frensîzî û baskordiya emerîqanî a diwemîn di tevayiya qadên şerî de zora xwe didin qiwetên Mihwerê.

Nû-Delhî— R: Di eniya şerê Arakanê de topçiyên her du aliyan li hev û du xistine. Qiwetên brîtanî û japonî gelek caran dirêjî hev û du kirine, lê rewişa eskerî ne guheriye.

## SERFERMANDARIYA SOVYETI DIDE ZANIN

Moskû:— A.F.I. Danezana sovyetî a nîvê şevê elam dide: di tevayiya qadên şerî de rewîşa eskerî bi awakî hêja ne guheriye. Qiwetên me di Behra-Reş de, waporeke elemanî a barkêş xeriqandiye.

Refên me di eniya şerî de 5 tangên elemanî şkênandine, û 30 qamyon tejî esker an çek û posat dagirtî xira, 3 depocebilxane berhewa û 15 betariye top lal kirine.

Di erdê Kuban, Rostov, Balaklaia û di eniya roa vayî de, leşkerên me zehf eper û asegehên elemana vegirtine û xesarine dijwar gihandine wan.

## GENERAL EIZENHOWER

Londre— R. General Eizenhower di civana rojnamevanan de gotiye ko noqavên brîtanî û yên hevalbendan di Behra Spî de, milyonek ton waporên neyaran bin av kirine.

## MERHELE

2

Ştexalî li ser «divêtê»ye. Divêt holê bikin; divêt holê bêtê çêkirin. Ji vî sedî her yek ji ê din xurtir û zeximtir e. Wextê kirinê ye. Ji wî sed peyayî ancax deh peya mane. Ma çire?

Niho ezê rê bidim peyayên ko ji kirinê xwe dane paş. Ew du sebeban şanî me didin û dibêjin:

1— Tu tişt ji min nayê, ma xwendina min jî çi ye ko ez bikarim bi kêr bêm . . .

2— Ma tu nabînî, herkes neyarê kurd e. Tukes arîkariya me nake. Siyaseta dewletên ewropayî ên mezin hero bi awakî ye. Ji bo xatirê miletên din rûyê xwe ji me badane.

Ji aliyê kirdê ve, di van gotinan de ti;tên rast; heqîqetine eşkere hene. Lê ev tişt nikarin me ji xebata xwe a edebî bi şûn da bihêlin.

Niho em li wan vedigerînin û dibêjin: Di xebata me ya îro de heçî divê û di xwe re dibîne dikare bi kêr bê. Çawan?

Bi hînbûn û hînkirina elfabeya me. Yê ko bi sih û yek tîpên kurdî dizane, ew kes mamosteyek e. Ji xwe ti;tê ko îro ji me re divêtin mamoste ne, mamosteyên gerok yên ko tîpên me di nav milet de belav dikin, xelkê hînî xwendin û nivîsandinê dikin.

3— Rast e ko siyaseta dewletên mezin hero bi awakî ye û gelek caran ew siyaset ne bi daxwaza me ve ye. Bivê nevê ew siyaset bi me re biwa karê me gelek hêsanîtir dibû û wî karî zûka fêkiyê xwe dida. Lê rexma ko ew siyaset ne bi me re ye, wê siyasetê tucaran xwendin û nivîsandina zimanê me bend ne kiriye. Heye ko nimînendeyên wan dewletan nav di me dane û gotine: Bixwînin û xelkê xwe bi xwendin bidin.

Heke em li hêviya arîkariya dewletan mane Xwedê dizane ew arîkarî kengê têt. Heye ko yekcar nayê. Ji lewre û herwekî medheloké gotiye. Şêr bi lepê xwe, Şêx Adî nayê hawara te.

Herçî merhela ko em îro tê de ne, merhela «a» û «bê» ye. Lê heke me dil kir, em di vê merhelê re zû dikarin derbas bibin. Ji ber ko hînbûna a û beyên me, ji mehekê bêtir najo.

XWENDEVANÊN DELAL halê me kurdmancan ev e. Û êdî suc [ne] yê beg û şêx û axaleran, lê yê mineweran e. Ji lewre em gazindên xwe ji wan dikin. Herçî beg û axeler heke ew bixwazin jî li ber xebata mineweran rabin, nema ji wan têt. Ji xwe birekî wan hevalên mineweran in û bi wan re li hişyariya milet dixebitin.

Mîna Mela Enwerê ko li Amediyê sûxteyên xwe hînî tîpên kurdî dike.

Celadet Alî BEDIR-KHAN

## REŞBELEK

— Ji xortên Cezîrê re —

Gerçî ez dûrî we me, îro, erê..
Lê bi dil ez ba we me, mîna berê.

Hûn dizanin ez ji bo çi dûr ketim,
Herçî zana dizane vê xeberê.

Ez evînê şekirê Şamê ne bûm,
Lê ji ber jana ku dabû cegerê.

Ez hevalê we me, ger dûrî we bim,
Para min bêtir dibe ji kederê.

Yek roja ku min bi wer' derbas dikir,
Ne dianî bîra min salê herê.

Yek nêrîna Mêrdîn û Burca belek,
Bi Xwedê nadim bi «eswed hecer» ê.

Neynûka yekî ji we na guhêr im,
Bi hezar «Zêd» û bi hezar «Ûmer» ê

Ez glî û gazinan ji kê bikim?
Nijdevanê me bû bûn swarê kerê,

Lê bizanin rojeke min jî heye,
Qelema niştir ji kalan ê derê.

Hingî hîsab û kitab têtê kirin
Ji cewrên wê dêlika derbederê.

18-3-943 QEDRÎ-CAN

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ



MAREŞAL JOFIR WAPREKE FRENSIZÎ
Yekînike mezin ji stola Frensa Serevanî a bar û eskerkêş.



QESRA HIKÛMETÊ LI NÛ-DELHIYÊ
Ji bergehên Şaristana Nû-Delhiyê- axa Hindistanê — Ev qesra çeleng û spehî çîredestê qesirbendê ingilîzî ê mezin Sir Edwin Lutyens e



VEDETÊN EMERIQANÎ EN TORPILAVEJ
Ev gemiyên biçûk ji bona waporên neyaran talukeke mezin in; ko torpîleke wan rast bi rast li armencê ketiye; ev derb besî binavbûna waporekê ye



IBADETGEHEK JI YÊN INGILISTANÊ
Ibadetgehek ji yên erdê Ingilistanê. Avahiyên erdê Brîtanya Mezin, avahiyine stûr û qaim in; kubarî û bedewiya wan bi nav û deng e

IMP. LE MIROIR D'ORIENT - BEYROUTH

1ère ANNEE — LUNDI 3 MAI 1943 — NUMERO 1

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet Place des Canons Tél.. 74 04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## ROJA NÛ (Le Jour Nouveau)

Roja Nû ! le Jour Nouveau !

Ce titre à lui seul est un programme qui emprunte à la période de l'année qui le voit naître son caractère et ses promesses.

Ce quotidien voit, en effet, le jour à l'époque printanière où les germes des plantes prennent une vie nouvelle, où le cœur de l'homme s'ouvre à l'espoir, où la pensée sent se renouveler ses forces créatrices.

A quoi vise, en effet, cette publication ? A former le peuple Kurde en lui donnant des nouvelles venues des diverses parties du monde. A mettre à portée de la masse kurde les trésors d'une littérature qui n'a pas attendu à aujourd'hui pour traduire la magnifique énergie de tempéraments entiers s'exprimant à la fois dans l'amour et dans la guerre.

Depuis quatre siècles déjà la littérature kurde a servi d'instrument à toute une pléiade de poètes classiques parmi lesquels les noms de Melayê Djezîrî, Ahmedê Khanî, Siyehpouche et Akhayok sont restés les plus célèbres et les plus vivants.

Mais ce lyrisme vigoureux qu'exprimait la langue écrite restait en grande partie la chasse gardée d'une élite cultivée dont l'entrée demeurait interdite à la masse illetrée.

Et comme d'autre part un grand peuple à la pensée vigoureuse aux sentiments virils ne peut pas se passer de littérature, le peuple versa le trop plein de son âme dans un folklore d'une richesse dont les «Textes Kurdes» traduits par Mr. LESCOT et publiés par les soins de l'Institut français de Damas, peuvent seuls donner une idée à ceux qui n'ont pas l'avantage d'en connaître la langue.

C'est la tradition orale qui a permis a ces poèmes en vers libres de parvenir jusqu'à nous.

Nés dans le peuple et non écrits, ces poèmes ont gagné en profondeur et en vigueur le développement qu'ils ne pouvaient atteindre en surface.

Moins connus, ils restèrent plus purs et ne subirent pas les influences arabes et iraniennes qui dans une certaine mesure altérèrent les oeuvres classiques écrites en caractères arabes.

Ils traduisent ainsi plus exactement et plus sûrement l'âme même du peuple. De là outre leur incontestable valeur esthétique, l'intérêt historique, psychologique et pratique qu'ils présentent.

A l'époque moderne, cependant, où la force de la transmission orale fléchit sous le poids du papier imprimé, il convenait, si l'on voulait que ces joyaux demeurassent, d'enchâsser pour les siècles à venir, le verbe sonore dans l'écrit qui le fixe.

C'est ce que comprirent les Emirs Bedir Khan qui conscients des nécessités modernes et pour atteindre plus facilement leur but décidèrent en 1919 de choisir pour traduire leur langue un alphabet latin.

Ils ne faisaient ainsi que se conformer à l'évolution historique des langues aryennes dont le kurde est un rameau au même titre que les langues latines, slaves ou germaniques.

Ils faisaient plus encore. Ils mettaient à portée de la masse un véhicule littéraire qui pouvait servir à sa formation et à son développement en conformité avec les nécessités du siècle.

Vrais chefs en cela, restés dans la meilleure des traditions aristocratiques, ils ne pensaient pas qu'une élite cultivée dût vivre repliée sur elle-même en faisant abstraction des sentiments et de l'existence de la masse qui l'entoure.

Le chef doit conduire: il doit donc s'efforcer de faire comprendre à ceux qui le suivent ce qu'il convient de faire.

Et si de tous temps la place des chefs fut en tête des troupes dans le fracas des batailles, elle est aussi et plus encore peut être en tête des mouvements de pensée susceptibles de conduire l'humanité vers plus de bonté, plus de justice et plus de vérité.

RENÉ BOISSEAU

## Les DEPECHES de la NUIT

**Londres** 3 (R) — La première Armée Britannique a réalisé une nouvelle avance de plusieurs kilomètres le long de la route de Tebourba. La bataille fait rage en ce moment pour la possession définitive du Djebel Bou Aoukaz.

Au sud de Mejez el Bab les troupes britanniques ont repoussé 3 contre-attaques allemandes. L'ennemi continue à subir la pression des forces alliées qui ne laissent aucun répit.

**Moscou** 3 A.F.I.—Le Communiqué de minuit déclare que 281 avions allemands ont été détruits en combats aériens au cours de la semaine qui vient de s'écouler. Les pertes soviétiques durant cette même période se sont élevées à 106 appareils.

Des unités de surface soviétiques ont coulé un transport ennemi dans la mer de Barentz.

Le Communiqué ajoute que dans la région de Novorossisk, les Allemands ont déclenché, il y a quelques jours, une offensive vigoureuse à l'aide d'effectifs considérables. Protégés par leur aviation, les Allemands ont attaqué 6 jours durant, s'efforçant de briser la résistance des Russes. Tous les assauts ennemis ont été repoussés et de lourdes pertes ont été infligées aux troupes allemandes et roumaines. Plus de 7.000 soldats et officiers ennemis ont été tués; 25 tanks et autos-blindées ont été incendiées, L'ennemi, épuisé par ces tentatives a renoncé à l'attaque.

Sur le front central, les Russes ont liquidé plusieurs détachements de reconnaissances ennemis.

A l'ouest de Rostov, échange de tirs d'artillerie.

**Londres** 3 R,—Des bombardiers lourds américains ont attaqué dans la journée de Samedi le port de St.-Nazaire. Plusieurs avions ennemis ont été abattus au cours de cette opération qui s'est déroulée dans de mauvaises conditions atmosphériques. 7 bombardiers sont manquants.

**Washington** 3 (R)— Le Département de la Marine communique que les sous-marins américains patrouillant dans le Pacifique ont coulé jusqu'ici plus de 125,000 tonnes ds bateaux japonais, depuis le commencement de la guerre,

**Washington** 3 (R) — Le Département de la Marine communique que l'aviation américaine a bombardé les positions japonaises à Munda dans le secteur central des Iles Salomon.

Dans le secteur nord du Pacifique deux attaques ont été effectuées contre les positions japonaises de Kiska.

**Nouvelle Delhi**, 3 (R)— Le Q. G. américain annonce que l'aviation américaine a bombardé l'aérodrome japanais de Pagoda, au sud de Rangoon. Des coups directs ont été observés sur les pistes d'envol.

D'autres formations de bombardiers américains ont attaqués des installations ferroviaires ennemies dans la région de Mandalay,

**Stockholm**, 3 (R)— Le général Jani, Commandant en Chef des troupes hongroises a déclaré officiellement que les forces hongroises se concentreraient sur la défense de leurs frontières nationales et ne prendraient plus longtemps part aux opérations sur le front de l'est.

**Alger** 3 (R)— Radio-Alger annonce que les unités de la 2ème Armée Américaine opérant dans le secteur nord de la Tunisie ont atteint un point situé à 20 kms. de Mateur.

## LE NOUVEAU PORTE-AVIONS BRITANNIQUE L'«INDOMITABLE»

Londres.— A.F.I. On vient de publier des précisions sur le nouveau porte-avions britannique l'«Indomitable», qui appartient à la classe de «l'Illustrious». Il jauge 23 milles tonnes et transporte des escadrilles de bombardiers-torpilleurs, des appareils de reconnaissance et les *Spitfires* destinés à la mer.

On ne dit pas combien l'«Indomitable» peut transporter d'appareils, mais il est plus grand que l'«Ark Royal» qui pouvait en prendre un maximum de 60. L'«Indomitable» a un armement défensif de 16 pièces de 4 pouces et demi et de nombreuses pièces de plus petit calibres,

Ce navire a déjà participé à de nombreuses actions, notamment il a transporté à Ceylan les *Hurricanes* qui étaient anxieusement attendus pour cette île qui s'attendait à un débarquement japonais. Les *Hurricanes* arrivèrent à temps et les avions japonais qui devaient frayer la voie aux troupes d'invasion furent taillés en pièces.

C'est en août dernier que l'équipage de l'«Indomitable» entra pour la première fois en action, pendant la bataille que livra le convoi qui transporta à Malte du Ravitaillement de la plus haute importance. Le pavillon du vice-amiral Lyster flotte sur l'Indomitable». Celui-ci est le pionnier du mouvement en faveur de l'emploi d'appareils à grande vitesse sur les porte-avions. Des appareils spéciaux permettant l'atterissage de ces avions ont dû être construits pour cela.

## VISAGE DE LA FRANCE

*Peu de noms de pays évoquent pour les hommes du monde entier une silhouette aussi précise que celle de la France: peu d'ensembles politiques, intellectuels et moraux correspondent à ce que l'on appelle une nation sont aussi profondément enracinés dans un cadre aussi stable.*

*Les Grecs avaient déjà été frappés de l'unité géographique de cette partie de l'Europe et César assignait en gros à la Gaule les limites de la France de toujours.*

*Le principal caractère de la géographie physique de la France c'est LA MESURE. Tout y paraît être à la taille de l'homme; 550.000 km2 au lieu des 20.000.000 de km2 de l'URSS; une forme hexagonale qui fait qu'aucun point n'est à 500 kms. du centre et qui réduit au minimum la longueur des frontières; des terres situées de part et d'autre du 45° et frappées de plein fouet par les courants chauds de l'Atlantique, ce qui fait que la Gironde ne gèle jamais à la lattitude de Québec; une longue façade maritime sur les deux mers qui successivement, et depuis la percée de Suez simultanément, ont été les plus grands centres de civilisation et de circulation du Globe, des frontières limitées par les montagnes sauf malheureusement au Nord-Ouest où, comme le dit le Général de Gaulle «Se trouve l'infirmité séculaire de la Patrie». A l'intérieur de l'hexagone une heureuse répartition des plaines et des montagnes avec le magnifique château d'eau du Massif Central facilement pénétrable et, aujourd'hui, distributeur d'énergie électrique. Pas de fleuves géants mais des cours d'eau domestiques, aux colères rares comparées à celles des fleuves chinois.*

*Mais si le premier caractère de la France est la MESURE, le second en est bien la VARIÉTÉ. Les combinaisons du relief, du climat et de l'hydrographie ont créé une multitude de pays qui se suffisaient à peu près eux-mêmes, ce qui explique la persistance d'un régionalisme puissant. Cela eût pu être un danger, la France aurait pu rester compartimentée comme la Grèce ancienne. Mais partout se trouvent des voies faciles de circulation générale qui ont empêché dès l'origine les pays de s'attarder dans l'isolement: L'Andorre, le Luxembourg et Monaco sont excentriques, l'autonomisme breton est un amusement d'intellectuels.*

*A cette terre, à leur mesure, des hommes venus de partout appartenant à toutes les races ont incorporé une prodigieuse quantité de travail. Ils ont défriché les forêts, endigué les fleuves, amélioré le sol; remué pendant 2000 ans tout ce qui était labourable. Peu de terres ont été aussi HUMANISÉES et, en faisant le bilan des avantages naturels de toutes sortes de la France, en admirant la réussite de la collaboration des hommes et du sol, un écrivain allemand s'écriait "Dieu est il Français?"*

E. B.

# LA PRESSE KURDE

«Roja Nû», quotidien kurde... En lisant cette manchette, beaucoup penseront se trouver en présence d'une curiosité, dont la possession ferait le bonheur d'un bibliophile: le premier numéro du premier journal kurde. Qu'ils se détrompent. Le passé de la presse kurde est déjà long; elle pourra, dans quatre ans, fêter le cinquantième anniversaire de sa fondation.

En 1897, Midhat beg Bedir Khan inaugurait au Caire la publication de son «Kurdistan», que son frère, Abderrahman beg poursuivit plus tard, d'abord en Egypte, puis en Suisse, à Londres, et à Folkestone. Lors de la proclamation de la Constitution de 1908, «Kurdistan» reparut à Stamboul même, sous la direction de Souraya beg, neveu d'Abderrahman, mais durant très peu de temps.

Par la suite, à partir de 1912, le «Hêvi», qui groupait les étudiants kurdes de Constantinople, édita une revue mensuelle, «Roja Kurd» (Le Soleil Kurde), qui abandonna bientôt son premier titre pour celui de «Hetawê Kurd». Enfin en 1914, les missionnaires protestants d'Ourmia créèrent un nouveau périodique, «Kurdistan»' qui n'eut qu'une durée éphémère.

La guerre mit pour quelques temps, un frein à cette activité littéraire, mais le mouvement était lancé. Dès 1916-17, Souraya beg Bedir Khan, reprenait, sous le pseudonyme de Ahmad Azizi, la publication au Caire du journal «Kurdistan».. En 1919, le retour de la paix et l'espoir de l'indépendance encouragèrent les intellectuels à se remettre à l'oeuvre. A Stamboul même, quelques uns d'entre eux entreprirent la rédaction d'un hebdomadaire, «Jîn» (La Vie) qui, bien que de langue turque, travailla, durant quelques mois, à diffuser l'idée nationale kurde. Les éditeurs de «Jîn» commencèrent en outre l'édition d'une série de suppléments littéraires; ils dûrent malheureusement, s'arrêter au premier volume. Cette plaquette, qui n'était autre que le «Memozîn» de Xanî, l'épopée nationale kurde, fut saisie par les autorités; il n'en subsiste actuellement que quelques rares exemplaires, sauvés de la destruction.

L'avènement du mandat britannique en Iraq permit à la presse kurde de s'épanouir à peu près librement dans les provinces de dialecte Sorani. A Suleimaniyé, à Kirkouk, à Rawandouz, à Arbil, et même à Bagdad, se fondèrent, entre 1920 et 1930, une quinzaine de journaux et de revues dont nous ne citerons que les principaux: «Pêşkewtin» (Le progrès, Suleymaniyé, 1920-22), le premier en date, «Bang ê Kurdistan» (L'Appel du Kurdistan, Suleymaniyé, 1922); «Bang ê Haq» (l'appel de la vérité; Suleymaniyé, 1923), journal officiel de Şêx Mehmûd, durant sa royauté passagère; «Jiyanewe» (La ressurrection), qui devint un peu plus tard «Jiyan», tout court (La Vie), journal officiel de la municipalité de Suleymaniyé, dont le premier numéro date de 1924, et qui continue encore à paraître; «Zar ê Kurmancî» (La langue Kurde, revue littéraire, Rawandouz, 1926-32); «Diyariy ê Kurdistan (1925-6, Bagdad). On trouvera une liste complète de ces périodiques dans l'article de C. J. Edmonds, «A biliography of Southern Kurdish, 1920-1936 (Journal of the Royal Asian Society, 1937, pp. 487-97). Enfin, un groupe d'intellectuels imprime, depuis 1939, à Bagdad, une excellente revue, «Gelavêj» qui, grâce à sa tenue littéraire est certainement l'une des plus intéressantes de tout le Proche Orient.

* * *

Bien que ce soit en Iraq que la presse kurde ait trouvé le terrain le plus favorable à son développement, les périodiques qui paraissent dans ce pays ne semblent pas appelés à avoir, dans l'avenir, le même rayonnement que ceux qui s'éditent actuellement à Erivan, et surtout à Damas.

En effet, les Kurdes de Suleymaniyé sont restés, pour différentes raisons politiques et religieuses, fidèles aux caractères arabes, qui s'adaptent très mal à leur langue. Leurs compatriotes d'Arménie Soviétique et de Syrie ont adopté, en 1929 et en 1933, respectivement des systèmes graphiques plus modernes. Celui qu'ont imaginé les Kurdes de Russie est une transcription assez compliquée dans laquelle voisinent des caractères latins, arméniens et russes, mais qui tend à s'assouplir par l'usage. Purement latin, l'alphabet employé en Syrie est d'un maniement beaucoup plus commode; sa diffusion, chaque jour plus grande dans toutes les classes sociales, fait prévoir qu'il l'emportera définitivement, et à brève échéance.

A Erivan paraît, depuis 1929, «Riya Taze» (La Voie Nouvelle), quotidien d'information, contenant parfois des articles littéraires. Il n'a pas encore franchi les frontières de l'U.R.S.S.

A Damas, de 1933 à 1935, fut publiée la première série de «Hawar», d'abord simultanément en caractères latins et arabes, puis uniquement en caractères latins. Après une interruption de six ans, la revue vit de nouveau le jour en 1941. Son cinquante-quatrième numéro se trouve actuellement sous presse. La collection complète de «Hawar» constitue un incomparable instrument de travail pour quiconque s'intéresse au Kurdistan. Elle renferme en Kurde et en Français, la plus riche documentation littéraire, linguistique et historique qui ait encore été publiée sur ce pays. Elle permet en outre de suivre pas à pas l'évolution et les progrès de la jeune école littéraire kurde, grâce aux nouvelles de Bişarê Segman, de Qadrîcan, de Nûredin, aux poèmes de Cegerxwîn, de Hişyar, d'Osman Sebrî, de Ehmed ê Botî, et aux articles de Slêmanê Ferho ou de Dilawer Çarpîne, sans oublier le «Tefsir» du Docteur Kamuran Bedir Xan, aussi subtil théologien qu'excellent écrivain.

Depuis 1942, «Hawar» possède un supplément illustré, «Ronahî» (La Lumière), dont le succès ne cesse de s'accroître, tant en Iraq qu'en Syrie.

Souhaitons à «Roja Nû», troisième périodique Kurde en caractères latins (en «lettres kurdes», disent les Kurdes), longue vie et pareille fortune.

ROGER LESCOT

## POEME KURDE

*Traduit en vers Libres*

### LA SECONDE

*Comme les gouttes*
*D'une pluie torrentielle*
*Tombent les secondes*
*Et le fleuve de l'heure monte*
*Les jours vagabonds*
*Envahissent, inondent*
*Les plateaux*
*Des mois et des années.*

***

*La flamme terrible de la seconde*
*Brûla le corps des siècles*
*La cendre de cet autodafé*
*Couvre les pâles pages de l'histoire*
*Comme une légende et ses fées.*

***

*La fumée monte vers le ciel,*
*Vers le pays des étoiles;*
*La porte du soleil s'ouvre*
*Après l'orage,*
*On voit sur la terre sèche*
*Les sillons*
*Où passa le géant des âges.*

DR. BEDIR KHAN

## PROVERBES KURDES

Rien n'est plus faible que l'herbe, pourtant elle ne reste pas sous les pierres.

Longue route vaut mieux que tombeau profond,

«C'est à dire: les entreprises dangereuses sont préférables à l'inaction».

Une main lave l'autre, les deux, le visage.

«C'est à dire: «l'union fait la force».

L'âne a un mors et un licou, et l'homme, une parole et une promesse.

Le poltron meurt à chaque instant, le brave, une seule fois.

L'argent est un bon valet, mais un mauvais maitre.

L'ennemi du père ne devient pas l'ami du fils.

*Provisoirement,* LE JOUR NOUVEAU *paraîtra une fois par semaine, le Lundi.*

# LA MARINE DE LA FRANCE COMBATTANTE
# LA "MINERVE"

*L'aventure d'un sous-marin Français Libre racontée par le commandant de la «Minerve»*

Vers onze heures du matin nous nous trouvions à quelques centaines de mètres de la côte norvégienne du côté de Stavanger. On pouvait facilement voir les arbres et les rochers de la côte, par le périscope que nous utilisions et qui sortait à peine de l'eau.

Soudain je vis un grand bateau citerne sur lequel flottait la Swastika (la Croix gammée). Il était lourdement chargé et se dirigeait vers la côte, Sans perdre le temps nous lâchons nos torpilles. «Tube un et deux: Feu»

Un sillage argenté et une explosion. Les torpilles avaient atteint le bâtiment au centre et l'explosion formidable qui fit trembler la «Minerve» fut suivie d'une immense gerbes de flammes.

Je savais alors quel serait le sort de ce bateau citerne. Malheureusement c'est la «Minerve» qui, à ce moment-là nous donna un souci imprévu, car si vous lâchez deux torpilles coup sur coup, vous allégez le sous-marin d'un poids appréciable et, l'eau n'ayant pas remplacé l'air assez vite dans les tubes, La «Minerve» se mit à sauter comme un dauphin. Nous nous trouvâmes tout à coup en surface, sans l'avoir voulu.

Nous avons certainement dû faire sensation en apparaissant ainsi soudain au milieu de l'escorte du bateau-citerne Un destroyer allemand se trouvait à quelques mètres, un peux plus loin un chalutier allemand, et au-dessus un bombardier faisait de grands cercles comme un mouette en colère,

Je ne sais pas qui de nous fut le plus surpris. Leurs navires n'eurent pas le temps d'ouvrir le feu. Le bombardier fut plus rapide et nous arrosa de ses mitrailleuses. Les balles résonnèrent sur la coque comme des pièces d'argent jetées furieusemant dans une boite en fer.

Heureusement nous pûmes plonger en moins d'une minute. Nous plongeâmes d'ailleurs si vite que nous allâmes au fond comme une pierre.

C'est alors que la chasse commença. les grenades sous-marines et les bombes pleuvant sur nous. Nous avons compté que pendant les 40 premières minutes, il y eut en moyenne une explosion toutes les deux minutes,

Il est miraculeux, les Allemands nous ayant vus, qu'aucune de ces bombes ne soit tombée sur nos têtes. Le fait est que la «Minerve» fut secouée et trembla comme de la gelée, craqua et vibra comme une maison dans une tornade.

A ce moment. notre réserve d'air s'épuisant, la situation s'aggravait sans cesse, et l'atmosphère devenait de plus en plus dense et tendue. Mais il n'y avait rien d'autre à faire pour nous qu'à attendre. Nous entendîmes au-dessus de nous un bruit d'hélices, puis une explosion, de nouveau des hélices et une nouvelle explosion.

«Celle-ci semble plus lointaine» nous disions-nous, pleins d'espoir. Les hommes transpiraient abondamment, respiraient lentement et ne parlaient pas pour économiser l'oxygène. Chacun écoutait, les nerfs tendus... Lorsque les souliers de l'un des hommes résonnèrent sur le plancher de fer, chacun protesta. Ensuite chacun enleva ses souliers. Je n'ai pas de mots pour exprimer la tension suffocante de ces instants. On priait Dieu pour un peu d'air frais.

Pendant 13 heures, les bâtiments ennemis ont patrouillé au-dessus de nous. A la tombée de la nuit, il y eut une accalmie et nous pensions que c'était terminé, lorsque nous entendîmes de nouveau cet épouvantable bruit d'hélice suivi de trois explosions chacune plus forte que la précédente. La «Minerve» fut secouée avec violence.

Je plaisantais avec mes hommes, mais je craignais que la suivante de la série ne fût pour nous. Il n'eut pas de suivante.

Quand tout fut calme, nous remontâmes à la surface, Le sous-marin était endommagé, mais nous pûmes heureusement regagner le port par nos propres moyens,

Sal 1 — Hejmar 2

Duşemb 10 Gulan 1943

# ROJA NÛ

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## SINÇI U OL

### SINÇÎ (EXLAQ) Û OL (DÎN)

### GIRÊDANA WANA BI HEV RA

Der heqê sinçî da berê û paşê gelek tişt hatine gotin. Heke em van gotinan bînin ber çavên xwe, pê bibînin ko di vî warî da ya ko em dikin bêjin, tiştekî pirî biçûk û bêkêr e. Ji lewra bila neyê bîra xwendevanan ko em dixwazin sinçî ji wan ra salix bidin; an di vî warî da tiştine nû û hêja bêjin. Bi tenê qesda me ji nivîsandina vê bendê, li ser girêdana sinçî û olê peyivîn e.

Sinçî, tevî ko ji tevayiya kirên qenc ra hatiye gotin, di kok da yek be jî di nav hin miletan da bi şax û tilayên xwe ji hev diqete. Carina tiştekî ko di nav miletekî da kirina wî qenc hatiye nasîn, di nav miletekî din da şerm û fihêt e. Lê tevî vê yekê, di her derê da kok yek e û weke xwe hatiye parastin

Dema em li rûpelên dîrokê dinêrin, em dibînin ko di demên berî dirokê da, rê û rêzikên sinçî bi navê Xwedê hatine danîn; ko ji daniyên van rê û rêzikan ra jî pêxember hatiye gotin. Piştî wan pêxemberan, li rohelata dûr Qonfiçiyûs û li ya nêzîk Zerdeştê Kurd; li roava jî Aristo, Suqrat, Felatûn û Zenûn di vî warî da gelek rê û rêzik danîne. Ji van Camêran, herdu seydayên rohelatê Qonfiçiyûs û Zerdeşt dîsa bi pêyembertî hatine nasîn. Lê ên roavayê, bi navên xwe û eqil, hîmên xebata xwe danîne.

Piştî van zanayên mezin jî du ol (olên Îsa û Mihemed) hatine ko îro li ser rûyê erdê, piraniya xelkê xwe bi rê û rêzikên van her du olan girtine.

Pir mirov hene ko sinçî tiştekî û olê jî tiştekî din dizanin; lê ev raman di hindav da e pûç e. A rast ew e ko ol û sinçî yek tişt in; an yek kakil û yê din qalik e. Li ser vê teşbîhê heke em ji van herduyan yekî kakil û yê din qalik bihesibînin, divê sinçî kakil û ol jî qalik bête zanîn. Heye ko ev teşbîha han dilê hinekên têne gihe-tî biêşîne. Lê ez ji wan celeb mirovan ra dibêjim ko: mirovekî xweyî sinçî bê ol dibe; lê mirovekî bê sinçî xweyî ol (dîndar) nabe.

Di olekê da herçiya ji bo qenciya mirovan hatiye gotin, ew sinçî ye; ji vê pêva ko çi dimîne, ew zêdeyiya olê ya ji sinçî ye. Heke em bi awakî din bixwazin bêjin; di olekê da ji bawerî û nimêjan pêva, herçiya ko heye, bi ser û berên xwe va sinçî ye; an sinçî ji wan tiştan bihevketî ye. Ji vê ye ko bawermendên kîjan olê bibin, çi gava sinçî wenda kirine an berdane; dûmahîka olê ya mayî ji bextereşiyê pêva ji wan ra tiştek çar ne kiriye.

Dema me ev yeka han got, divê em ji bîr nekin ko sinçiyê bê ol jî gelekî dûm nake û nikare xwe paqij biparêze. Herwekî kakilê bê qalik çawan zû qencî û xweşiya xwe wenda dike û kufikî dibe; sinçiyê bê ol jî zû qencî û delaliya xwe bi guhartinên zû wenda dike. Ji ber ko ol rê nade guhartina sinçî û wê di nava sînorên xwe ên zexim da diparêze.

Gelên bextiyar ew in ko piştî naskirinê bi ol û sinçî girtine û ji bo serbilindiya xwe ya sermedî her wan bi çakî diparêzin.

**OSMAN SEBRÎ**

## BIHNA MIHWERÊ DIÇIKE

### Di nav sê mehan de 466 wapor hatine bin av kirin

Londre —R: Hewalbenda ji wextê ko pê li erdê Efrîqa Bakurî kirine û heta îro di Behra Spî de 466 waporên talyan û elemanî binav kirine; 204 wapor bi derbên noqavan, 29 bi yên waporên rûyê behrê û 233 heb jî, bi torpîl û bombeyên balafiran hatine xeriqandin.

Londre —R: Heta îro 100.000 segman, 12.000 balafirvan û 3,000 deryavanên polonî tenişta hevalbendan de şerî qiwetên Mihwerê dikin.

La Valet —R: Balafirên qerargeha Girava Maltayê heta niha 1001 balafirên dijmin avêtine erdê.

## ÇEK U POSATÊN MEHEKÊ

### 6.000 BALAFIR, 100 WAPOR 3,000 TANG

### Hevalbend bê etlahî çek û Posata çêdikin

Waşington —R: Mr. Nelson serekê şîretzariya emerîqanî a çêkirina çek û posatên şerî elam daye ko febrîqe û karxaneyên emerîqanî di sê mehên vê salê ên pêşîn de her meh 6,200 balafir, 100 wapor ji tîpê Libertî, her yek ji wan 10.000 ton mezin û 3,000 tang çêkirine. Lê niho destgehên emerîqanî hero 5 wapora çêdikin, li mehekê 450 wapor; 1,606.600 ton mezin.

Moskû — Di nav pênc mehên dawîn de, der nevala Kubanê 15 û heta 20,000 kuştiyên elemanî, serbend û segman pev re, li erdê mane.

Qiwetên Sovyetî li wê qadê 600 balafirên elemanî anîne xwar û bi sedan ve tangên dijmin xira kirine.

Moskû — Serfermandariya sovyetî dide zanîn ko hefta borî refên rûsî û topên balafirşiken 281 balafirên elemanî avêtine erdê; ji ûrisa 166 heb çûne,

## EGIDÊN ORDIYA SOR!

Moskû — R: Şevêdî Radyoa Moskovayê banî Ordiyên sovyetî dikirin û digot: Şerevaniyên Ordiya Sor xwe ji bona êrîşine nû pêk bînin û emrên Serfermandarê xwe Stalîn yek bi yek bînin cih.

### 500.000 SEGMANÊN FRENSIZ

Cezayir — A.F.I. General Jîro nûçegihayê ejensa A.F.I. re da zanîn ko Ordiyên Efrîqa Bakûrî ji 500,000 şegmanan bihevketî ye.

Wî gotiye: armanca me yek e, ev jî azahî û serbestiya welêt.

Londre —R: Refên brîtanî êvara roja çarşembê dirêjî axa Germanistanê kiriye û 1,500 ton bombe avêtine Dortmundê; runiştimanên wê Şaristanê 500,000 peya ne. Heta îro tu bajar bi awakî hinde xurt ne hatiye bombardiman kirin:

## ZOR U ZÊR

Di Ingilistanê de, pêncî milyon rûniştiman hene û ew hero 14 milyon lîreyên ingilîzî didin hikûmeta xwe û pê Brîtanya-Mezin şerê xwe bi serdestî pêş ve dajo.

Çek û posatên şerî yên ko îro eskerên her du aliyên şerevanî pê emel dikin gelek biha ne.

Ev e bihayên hin çek û posatan:

Zirehpûşek— wapora şerî a mezintir— ji texlîtê «Rodney» hêja ye 7.750.000 lîreyên ingilîzî. Tangek ji tîpê «Matîlda» 28 ton giran, hêja ye 20,000 L.I. tanga «Velantîn» 15 ton; hêja ye 15,000 lîreyên ingilîzî, û tangek ji tîpê «Çorçîl» bi 29.000 lîreyên ingilîzî tête çekirin.

Bihayê tifingekê 7 lîreyên ingilîzî ye. Cilên eskerekî bi kaxez û nîv û heta 2 kaxezan têne kirîn.

Topeke navhincî hêja ye 3,000 lîre û guleke wê, ji hêla jêrîn ve 8 lîre. Topeke wilo di nav deqîqakê de 12 gulan davêje, ko şeş topên wilo hemî bi hev re şixulîn di nav sê deqîqan de 1738 lîreyên ingilîzî dişewitînin.

Bihayê destriwayorekê — waporeke şerî ji xurtî û mezinahiya dereca çaremîn — 467.000 lîre ye, her topekê wê 6,000 lîre, her torpîleke wê 1,200 lîre.

Waporeke wilo 5 ton ardû dibe; bihayê wê 1.200 lîre; û bi vê ardûyê dikare ji Cebeltariqê rabe û here heta girava Maltayê.

Bihayê noqavekê 250,000 lîre ye. Korvêtek — waporşereke biçûk hêjaye 150.000 lîreyên ingilîzî.

### NEZANÎ



XERABÎ Û PERÎŞANÎ

Nezanî ne rahetiya canî ye, lê belê xirabiya malê. Dermanine biçûk hinik zanîn; gelek caran zora nexweşiyên mezin dibin, Ji xwe Xwedê gotiye: min derd û derman afirandine.

### ZANÎN



XELAS Û XWEŞÎ

Beytarekî frensiz arîkariya gundiyan dike: ev derziya ko wî lêdix e ne pezekî lê keriyên pez û garanên dewaran ji nexweşî û perîşaniyê diparêze.

### XWEŞÎ



FIREHÎ Û DEWLEMENDÎ

Dermanî pişta nesaxiyê şkênandiye; pez vegeriyane xweşiyê, rûyê gundiyan keniyaye.

Nezanî ne bitenê keriyên pez û dewaran, lê mala mirov û miletan jî xira dike.

## Bombardimana Dortmundê

### REFÊN BRÎTANÎ JI NÛ VE ÊRÎŞ KIRIYE

Londre — R: Refên brîtanî şevtira dî bi ser erdê Germanistanê de girtiye û li bajarê Dortmundê xistiye. Refên brîtanî ji bombeavêjên Helifeks, Sterling û Welington bi hevketî bûn. Wan bi hezaran qumbereyên teqandinê, û bombeyine mezin her yek ji wan 4,000 kilo giran avêtine vê şaristanê,

# DURIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ





### NARE

Navê Nara min Sarê
Çavre.ê ser bi şarê
Xwedê ji Paşê nexweş bê
Esker rakir ji Darê!

Navê Nara min Fato
Kimberzîvê ji Toqato
Xwedê ji Paşê nexweş bê
Esker rakir ji welato!

Navê Nara min Sîso
Kimber berda ser kîso
Xwedê ji Paşê nexweş bê
Esker rakir ji Bidlîso!

Navê Nara min Xorê
Çavreşê destmalsorê
Xwedê ji paşê nexweş bê
Esker rakir ji Torê!

Navê Nara min Eminê
Çavreşê destmalşînê
Xwedê ji Paşê nexweş bê
Esker rakir ji Merdînê,



### HEYNAYE

Heynayê lê Heynayê
Ez ban te dikim, çima nayê
Lingê min xistin qeydayê
Stoyê min xistin lelayê
Destê min xistin kelepçayê
Berê min dane serayê.

Heynayê lê Heynayê
Tama memkên te xweş in
Wek xurmayê Bexdayê
Wek hejîrê Rihayê.
Heynayê lê Heynayê.

Xwedê o xweş Xwedêo!
Kengê her û kengê bêo!
Tu gewra min rakî ji xewêo!
Çavê min lê ket bejneo
Xulam bejn û balêo.
Ezê bi çeplê te bigirim
Bavêm gundê Herbêo
Cem Mehmûdê Korêo

Xwedê o tu bakî rakî
Gewra ji xewê rakî
Bazina di desta kî
Xilxala di linga kî
Eyûna di ber riwa kî.
Xizêma di poz ra kî;
Tu qîza behra xorta kî
Ez terka çavê reş na kim
Heya qiyamet rabe
Pêwir û mêzên l'me dayê.

# Dema Dawîn

Londre — Qiwetên hevalbenda zora leşkerên Mihwerê birine û ketine bajarên Bizert û Tûnisê. Hawîrên selahiyetdar elam didin ko şerê Efrîqayê qediyaye û şerê Ewripayê ber bi destpêkirinê ye. Heta niha 50.000 esker û serbend 3 generalên elemanî ketine destê Hevalbenda.

Moskû — Êdî Ûrisa rast bi rast êrîşî bendera Novorosiskê dikin; di bakur - rohelatê vê şaristanê de şerine zor û xwîndar çêdibin, ji xwe Novorosisk bi xwe, êdî di bin hikmê topên Ûrisa de ye, ji alîkî topçiyên rûsî û ji aliyê din yekineyên çekê sovyetî ê hewayî bê etlahî vê benderê bombardiman dikin. Nûçeyên dawîn pêş çavan dikin ko di vê qadê de tasa şihîrê ber bi Ûrisa ve giran bûye û leşkerên rûsî der gelek cihan, xetên elemana neqeb kirine, ketine çeper û penahên di wan û di ser vê eniya şerî re, li ezmanan girtin û berdan bi timamî ketiye destê refên Ordiya Sor; û li bejê her çend ji elemana bi hemî xeyretên xwe dikirin pê bidin erdê û zorbiriya qiwetên rûsî bikin, ji wan ne hatiye ko pêşveçûna lekên şerevaniyên rûsî bisekinînin; wan berê xwe daye Novorisiskê û peşve tên.

Londre — Ordiya elemanî di axa Tûnisê de ketiye nav sêgûşeke bê eman û bê niyaz, ji her du aliyên bejê mina berfendeyên çiyabejin Ordiyên hevalbenda bi ser wan de tên û ber na din ko eskêrên elemana çavê xwe vekin û bihna xwe bistinin. Êrîşên hevalbenda ên xurt dijmina di hemî qadan de û bê etlahî bi şûnda dizivirînin û niho di nav bira yekineyên hevalbenda û Bizert û Tûnisê de mûyek maye.

Londre — R: Bi awakî resmî didin zanîn: Di balafirgeha Ueynetê de sed balafirên elemanî û gelek talyanî yên xirabuyî hatine dîtin.

# ÇAPA KURDÎ

### KOVAR Û ROJNAMEYÊN KURDÎ

Roja-Nû ya ko nû dikeve nav eyleta çapa kurdî, silavan li hevalên xwe ên jê kevintir dike û hilanîna navên wan ji xwe re wezîfeke hevaltiyê dinase.

Kovar û rojnameyên kurdî yên ko îro belav dibin ev in:

Reya-Teze: Li heftê sê caran û li bajarê Rewanê belav dibe; rojnameya kurdên Sovyetistanê ye. Bi zar û bi tîpên kurdmancî tête nivîsandin.

Jiyan: Kovareke edebî û ilmî ye; li serê her heftê carekê û li Sileymaniyê bi der têt. Bi zarê soranî têtê nivîsandin.

Gelawêj: Kovareke edebî û ilmî ye. Li serê her mehê carekê li Bexdayê derdikeve. Zarê wê soranî ye. Kovara Kurdî a mezintir û tekûztir e.

Hawar: Kovareke edebî ye. Ji sala 1933-an ve li Şamê û bi zarê kurdmancî têtê belav kirin.

Ronahî: Ev du sal in, li Şamê dest bi derketinê kiriye. Zarê wê kurdmancî ye. Ronahî kovareke misewer e û li serê mehê carekê derdikeve.

# MIREKA CIHANE.

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ



ZAROYÊN INGILISTANÊ

Brîtanya Mezin giravek e û heke riyên dinyayê ên behrî, ne di selametiyê de ne, Ingilistan dikeve perîşaniyê. Ev ingilîzên biçûk di zarokahiya xwe de dikevin dibistanan û hînî gerandina karên Stola Brîtanî a qehriman dibin. Selametiya rêyên dinyayê bi waporên şerî têne parastin.

Zaroyên ingilîzî berê xwe dane dibistanê û bi kêfxweşî dimeşin



ZAROYÊN DELAL KETINE DIBISTANÊ
Û DEST BI XEBATÊ KIRINE



QRALÊ YUGOSLAVYAYÊ

Qralê Yugoslavyayê Piyer Qralê Ewripayê ê ciwantir e. Ji bona azahî û serbestiya welatê xwe ketiye riya mihaciriyê û xwe gihandiye hevalbenda, û hatiye Londrê. Xortê bi cilê eskerî Qral bi xwe ye.

# DEMA NIHA

## 313 BALAFIR

### SERFERMANDARIYA SOVYETI DIDE ZANIN

Moskû — Di eniya rûsî de rewişa eskerî ne guheriye, Refên rûsî bê etlahî li hêjagehên elemana dixin. Di şerên hewayî de û li erdê 313 balafirên elemanî hatine xira kirin, 61 mekîneyên sovyetî venegeriyane warên xwe.

Londre — A.F.I. Di nav 4 rojên dawîn de refên hevalbenda di qada Behra Spî de 300 balafirên talyan û elemanî avetine erdê.

## SERFIRAZIYA EMERIQANI

### Sed û Bîst û Yek Nêçîrvan Hatine Xistin Erdê

Londre — R: Bi awakî resmî elam didin ko bombeavêjên emerîqanî di nav sê rojan de 121 nêçîrvanên dijmin avêtine erdê. 20 bombeavêjên emerîqanî venegeriyane warên xwe.

Londre — A.F.I. 40,000 eskerên elemanî yên ko di Tûnîsê de, bi destê eskerên frensizî hatine hêsîr girtin, nihû ji bona selihandina xesarên ko li wê erdê û bi çekên elemanî hatine kirin dê bêne xebitandin.

Londre — R: Emîraliya Brîtanî dide zanîn: noqavên brîtanî di Behra Spî de waporên Mihwerê didin ber derbên xwe, torpîl li 8 vaporan ketine, 4 hebên wan bin av bûne.

## GOTARA MISTER DAVIS

### Nimînendeyê Mr. Rûzwelt Der Pêşiya Egîdên Sovyetî

Moskû — R: Mr. Davis nimînendeyê Serekcîmhûr Mr. Rûzwelt hatiye Stalîngradê û beqek daniye tirbên eskeren ko ji bona parastina Stalîngradê di mêdana rûmetê de ketine axa mirinê. Mr. Davis di pêşiya şerevaniyên Ordiya Sor û xelkê de peyiviye û gotiye: Hevalino...!

Ez hatime mêvaniya bajarê egîd û mêrxasan; wan mêrên qenc yên ko di riya mezinahiya welatê xwe de, xwe bi kuştin dan, ev bajar parastin û dijmin sekinandin. Bi navê Serekcimhûr û miletê emerîqayê min gulçîcek danîne tirbên egîdan. Miletên Sovyetistanê û yên Emerîqa û Brîtanya - Mezin bi rêberiya sermiyanên xwe zora hitleriya bibin.

Her bijî leşkerên Sovyetistanê.

## PEYIVA SEREKWEZIR

### Mr. Çorçil Di Civatmiletê Emerîqanî De Peyiviye

WAŞINGTON — R: Serekwezîr Mr. Çorçil di civatmiletê Emerîqanî de peyîviye û gotiye: 17 meh borîne ji wextê ko ez li vê, cara yekemîn peyivîme û pê serbilind bûme. Îro 500 roj û hêj bêtir in ko eskerên me û we, tenişta hev de, li bej û av û hewayê, zora xwe didin dijminekî xurt û xedar û li zehf aliyên dinyayê destdanîya hev û du dikin.

Tecrîbeyên jiyîna min a direj ez qanî kirim ko di pêşiya armanceke rast û pak de, li demên ceng û silhê, ji bona qencî û selametiya dinyayê ji destbratî û yekîtiya her du miletên me çêtir û hêjatir tu kar nîne,

Serekwezîr qala cengê Pasifîk û yê Erdên Rohelatê Dûr kiriye û gotiye: refên brîtanî bi yên emerîqanî ve, direjî erdê japona bikin û lêxin.

Mr. Çorçil li ser pirsa noqavan gotiye: Herçend jî îro nik dilê min taluka mezintir cengê noqavan e; ez qailim ko emê vê talukê ji koka wê hilînin.

Mr. Çorçil qala bombardimanên erdê dijmina kiriye û gotiye; Refên me û yên emerîqanî ji giravên Brîtanya-Mezin radibin û destgeh, febrîqe, karxane, bender, balafirgeh û hemî hejagehên elemana bombardiman dikin. Xesarên ko gihane û digihin wan hêjagehan gelek dijwar in; û erdê Germanistanê heta niha bi awakî hinde xurt ne hatiye bombardiman kirin.

Refên me tim û daim didin pey dijmina û ew li Italyayê, li Germanistanê û di kijan erdê vegirtî de bibin jî, gava rastî hêjagehên wan tên lê dixin, bê etlahî û bi xurtî zora xwe didin wan.

Cengê Efrîqayê de 950,000 es- eskerên dijmin ji qiwet ketine, 2,400,000 ton waporên Mihwerê hatine xeriqandin; 8,000 balafir, 6,200 top, 2,500 tang, 70,000 otomobîl, qamyon û girgorokên talyan û elemanî bi derbên qiwetên me ji hev di ketine û hatine pelixandin.

Dinyayê li Tûnîsê bi çavê xwe dîtiye bi çi awakî hêja qiwetên frensizî, emeriqanî û brîtanî arîkariya hev û du û cengê dijmina kirine.

Ji aliyê din divê emê bidin eqlê xwe ko me di Efrîqayê de berberiya 15 firqeyên dijmin kirine û bi tenê 50,000 eskerên me çûne; di hemberê Ordiya Sor de 200 firqeyên dijmin hene.

Hêj li Ewripayê û der Welatên Rohelatê Dûr, karine girane li ser riya Hevalbenda de ne û ez û Mr. Rûzwelt bi pispor û mopîzanên xwe re dişêwirin û xwe pêk tînin heta ko bê winda kirina rojekê qiweta me bigehe armancan.

Qiwetên sovyetî pişta elemana skênandiye. Li erdê, giraniya barê cengî di ser stoyê Sovyetistanê de ye; 190 firqeyên elemanî û 20 firqeyên dewletên ko dane pey elemana di eniya rohelatî de, der hemberê Ordiya Sor sekinîne. Hitler bê şik careke din direjî Sovyetistanê bike; û ez qail im ko mîna her du cerên berî: zora wî dê bête standin; lê hêrhal divê emê cehda xwe bikin û îsal barê ko qiwetên rûsî hildigirin, siviktir bikin.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## Çek û Posatên Şerî Ên Nûjen



DU TANGÊN BRÎTANÎ ÊRÎŞÎ DIJMINA DIKIN.



VEDETEKE TORPÎLAVÊJ. DERBA WAN GEMIYAN DERBA MIRINÊ YE.



TANGÊN BRÎTANÎ JI TÎPÊ «VALENTIN III» DI AXA MISRÊ DE MINEWRAN ÇÊDIKIN.

1ère ANNÉE — LUNDI 24 MAI 1943 — NUMERO 4

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

La semaine qui vient de s'écouler n'a pas apporté de grands changements sur le front oriental, le seul front terrestre, en attendant que les Alliés en ouvrent un ou plusieurs autres. En Afrique du Nord, le bilan s'établit maintenant autour de 200.000 prisonniers dont 26 Généraux (et non 17 comme il avait éte annoncé précédemment.) L'ensemble des opérations, depuis l'entrée en guerre de l'Italie, a coûté à l'Axe environ un million d'hommes.

La R.A.F. et l'aviation Américaine ont joué le premier rôle cette semaine: Kiel, Flensbourg, des bases de sous-marins et des voies de communications en pays occupés, ont éte bombardées; les ports de Sardaigne,, de Sicile, de l'Italie du Sud ont été attaqués et le Lido de Rome, à quelques 20 kms. de la Capitale, a connu son premier raid. Les avions ont même survolé Rome, et Londres fait savoir qu'aucun engagement ne protège la Ville Eternelle, qui sera attaquée, si la situation l'exige, au même titre que Berlin bombardée quatre fois dans la même semaine.

Mais en plus de ces bombardements massifs qui tendent à devenir chose courante, la R.A.F. a réussi cette semaine un coup de maître: elle a détruit les deux barrages de la Mohne et de l'Eder qui sont parmi les plus grands d'Europe. En pleine paix, la rupture d'un grand barrage prend la proportion d'une catastrophe nationale. Dans les circonstances actuelles la rupture de deux énormes barrages, le fait qu'un troisième risque de céder et devra être vidé et réparé, constituent un désastre sans précédent. Dans la fourmilière humaine qu'est la Ruhr, des milliers de personnes ont péri, des centaines de milliers sont sans abri, toute l'activité est paralysée; les Centrales électriques ont été emportées, les conduites d'eau, de gaz et d'électricité sont détruites, les mines inondées. Il n'y aura plus assez d'eau cet été pour maintenir un niveau suffisant dans les canaux et pour fournir l'énergie électrique aux villes et aux usines. Ce seul raid peut diminuer de plus de 30% pendant des mois, la production de guerre allemande. Venant après les éclatantes défaites de Stalingrad et de Tunisie cette catastrophe, la plus grave de la guerre, ne contribuera pas à remonter le moral du Front intérieur allemand.

A Washington, les conférences entre MM. Churchill et Roosevelt se poursuivent et M. Churchill a fait, devant le Congrès, un remarquable discours. On connaît la prudence et le réalisme du premier britannique qui, quoique n'ayant jamais douté de l'issue finale, a promis à son peuple plus souvent des souffrances et de mauvais jours qu'une paix rapide, acquise après de faciles victoires. Ce dernier discours est nettement plus optimiste que les précédents et M. Churchill a parlé très justement de la nécessité de finir la guerre le plus tôt possible.

En Russie, on semble se livrer de part et d'autre à d'immenses préparatifs avant d'engager la bataille, qui pourrait être décisive. Les Russes ont pris des positions de départ sur la rive droite du Donetz, tandis que les Allemands défendent leur dernière tête de pont, sur le Kouban avec beaucoup d'opiniâtreté. Chez les Alliés, cette semaine a peut être été une veillée d'armes.

E. BERLAN

## Les DEPECHES de la NUIT

### Front de Russie

313 avions allemands ont été détruits au sol ou en combats aériens au cours de la semaine allant du 16 au 22 Mai, contre une perte de 61 appareils soviétiques seulement.

Autour de Lissichansk, les Russes ont consolidé les positions enlevées la veille à l'ennemi L'artillerie soviétique a pilonné les lignes allemandes, écrasant plusieurs casemates et réduisant au silence un certain nombre de batteries ennemies.

A l'ouest de Rostov, on ne signale que des duels d'artillerie.

Dans le Kouban, au nord-est de Novorossisk, 10 batteries allemandes ont été détruites par l'artillerie russe et 13 avions ennemis ont été abattus par la chasse et la D.C.A. soviétiques.

## L'ALLEMAGNE SOUS LES BOMBES

*«Le peuple allemand tout entier doit payer aujourd'hui pour les crimes de ses chefs». 4,000 victimes, 120,000 personnes sans abri: voilà le résultat de l'opération magistrale réussie par les bombardiers de la R.A.F. contre les fameux barrages du bassin de la Ruhr.*

*Ce sont les réservoirs de la Mohne et de l'Eder, affluent de la Ruhr avant son confluent avec le Rhin qui représentaient les objectifs des bombardiers «Lancaster» de la R.A.F. Ces barrages parmi les plus importants de toute l'Europe, fournissaient la force motrice à la majeure partie des usines sidérurgiques de Schwerte, Hagen et Elberfeld Barmen, centre des plus importants pour l'effort de guerre allemand, et à une partie des usines de ce qu'on appelle extensivement le «bassin de la Ruhr» jusqu'à Essen et Dortmund.*

*3 heures à peine après le raid des bombardiers britanniques, des avions de reconnaissance de la R.A.F. prenaient déjà des photographies des dégâts montrant des brèches de 30 à 50 mtrs. à travers lesquelles la masse d'eau s'échappait en un jet horizontal de plus de 60 mtrs. de portée, pour ensuite déferler dans les vallées, emportant tout sur son passage.*

*Des centrales électriques, des ponts et autres ouvrages d'art ont été emportés comme des fétus de paille. des voies ferrées et des gares de triage sont noyées, la navigation fluviale devra être interrompue; il faudra des années pour reconstruire ces barrages et plusieurs mois pour réparer les dégâts causés par les inondations qui, jusqu'à présent vont en augmentant sans cesse.*

*L'inondation continue à s'étendre, submergeant voies ferrées, routes, usines, villages. L'eau menace Dortmund et Kassel, siège d'importantes usines d'aéronautique.*

*Muelheim, ville d'environ 100,000 habitants est complètement inondée. Plus de 4.000 personnes auraient trouvé la mort au cours de ce désastre et 120.000 autres sont sans abri.*

*Selon des sources neutres bien informées. des troubles auraient éclaté à Duisbourg à la suite de la situation créée par la rupture de ces digues.*

*Les dégâts s'étendent sur une superficie de près de 100 kilomètres de long sur 60 de large. Le viaduc de Hardecké sur la ligne Dortmund Hagen Dusseldorf a été endommagé en plusieurs endroits et on peut nettement voir les rails pendre du haut du pont.*

*La gare de triage de Dahlhausen, l'une des plus importante de tout le bassin de la Ruhr est sous les eaux.*

*Le flot a atteint. de l'autre côté les usines de locomotives de Kassel est recouvre entièrement l'aérodrome de Fritzlar, l'un des plus importants de toute l'Allemagne. Hangars, baraquements, stocks de munitions et pistes d'envol sont submergés. Près de Webern et jusqu'à Karlsane, les remblais de la voie ferrée sont démolis en plusieurs endroits,*

*Ces terribles dévastations continuent à désorganiser complètement toute l'activité dans le bassin industriel de la Ruhr.*

*«Laissez moi assurer à l'Allemagne, a déclaré à Londres M. Eden, qu'en dépit de tout ce que prétendent Hitler et Gœbbels, notre aviation de bombardement ne fera qu'intensifier ses coups qui de jour en jour, se feront plus durs. Sans répit, toutes les heures, de jour et de nuit, les bombardements se poursuivront jusqu'à ce que la guerre soit gagnée. Voilà le programme que nous avons préparé pour l'Allemagne. Mais que l'Italie se rassure: Mussolini ne sera pas oublié.»*

## POÈME KURDE

### LA SULTANE

Comme un rayon de soleil
Dans l'ombre
Dans un palais sombre,
Brille la sultane comme un joyau
dans un tiroir,
Un beau visage regarde le miroir.

La sultane est dans son bain,
Un jasmin
Caressé par l'eau chaude
Qui rode
Sur ses seins où le lait
N'a pas encore circulé.

Dans ses yeux profonds, la nostalgie
De rêves pleins de magie
Blonde, parfumée,
Regarde la vie fuir
Comme la fumée.

Dans les jardins lointains d'Orient
La lumière tremble comme liquide.
Poussée par des images
Impatientes.

Telle une bédouine sous sa tente,
La sultane cherche sa destinée
Dans l'espace vide.

Son âme pleine de mystère
Comme sur un lit funéraire
Repose,
Entourée de feuillage fanés
Et de roses.
Elle est taciturne:
Une urne remplie des larmes
D'une soif inapaisée.
Ses lèvres cherchent des lèvres
A baiser.

DR. BEDIR KHAN

### Front de Méditerranée

L'offensive aérienne alliée en Méditerranée se poursuit sans arrêt depuis déjà 5 jours, en dépit d'une opposition croissante. En 96 heures l'aviation ennemie a perdu sur ce front 304 appareils, toutes ces opérations n'ayant coûté que 17 avions en tout à la R.A.F. et à l'aviation américaine.

### Front aérien d'Europe

Le Ministère Britannique de l'Air communique que tôt dans la matinée de Dimanche, des bombardiers de la R.A.F. ont attaqué la navigation ennemie dans la Manche. Un pétrolier faisant partie d'un convoi de 4 bateaux surpris au large de Guenersey, a fait explosion, Un chalutier armé a été endommagé et un autre navire a été abandonné en flammes.

Un second convoi ennemi a été attaqué par des «Typhons» jusqu'à l'entrée du port de Flessingue. Canonnés à bout portant, l'un des navires a été incendié et un autre cargo ennemi sérieusement endommagé.

### Front du Pacifique

20 bombardiers japonais escortés de 11 chasseurs ont effectué un raid contre l'aérodrome de Chittagong, dans le Bengale. Interceptés par la R.A.F., 7 appareils ennemis, 4 bombardiers et 3 chasseurs, ont été abattus, plusieurs autres étant plus ou gravement endommagés. 2 avions britanniques ont été perdus au cours de cette opération mais les pilotes sont saufs.

L'attaque japonaise effectuée à très haute altitude n'a causé pratiquement aucun dégât. On déplore cependant quelques victimes parmi la population civile.

Washington — R: On s'attend à ce que le Président Roosevelt et M. Churchill anonncent, lundi ou mardi, les résultats de la conférence anglo-américaine qui a duré deux semaines.

# DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

*Nivîsevan* *Grigorî Petrof*

## PÊŞGOTINK

*Wergerandok :* *Qedrî Can*

Berî pênc salan bi teşwîq û himeta Duktor Ehmed Nafiz beg min ev kitêb wergerand zmanê Kurmancî. Min hêvî dikir ku rojekê perên çapê pêda bikim û vê kitêba yekta ji miletperwerên kurd, nemaze ji xortên nuh re berpêş bikim. Lê muxabin, heta îro hêvîya ku min dikir xuya ne bû...

Min dît ko sal mîna şîpa avê di herikin û kaxetên ko min li ser wan nivîsîye, hêdî hêdî dirizin û kurm û mişk wan dixun... Ji aliyê din meriv mirin û mayîna xwe jî ni zane, ez tirsyam ku piştî xebat û westandineke ne hindik hêviya min ne çe serî; nivîsandinê min yan wenda bibin û yan jî birizin. Ji lewra, di vê rojnamê de bere bere belav dikim. Heke Xwedê li hev anî rojekê dîbe kitêb û tê çapkirin jî.

Ne hewceye ko ez pesnê vê kitêbê bikim.... gava xwendevanên me bixwînin evê bizanin ku ji bona miletê me çiqas bikêr e.

Hêviya min ev e ku miletperwerên me ji dil û can bixwînin û jê îbretê bigrin...

**Q C.**

## Ji Dîrokê îbret

40-50 sal berê, li Mosqiwayê di dîwarên koşkek jî koşkên dewletê de, ji nişkave qelîştekên mezin xuya kirin. Ev qelîştekên ji bingeh hetanî banî dirêjbûyî didan xuya kirin ku koşk ewê ji nişkave hilşe, her çî kesê der û hundurê xwe bipeçiqîne.

Muhendîs hatine, li sebebê van qelîştekan geriyane, çend cih ji dora bingeh vekirine; paşê dîtine ku ev koşka Mosqiwayê ya mezin û kargîr riziyaye û pûç bûyê; ko dike hilşê, di zemanê xwe de li ser bingehekî darîn hatiye ava kirin.

Gava dest bi çêkirina wê koşkê kirine, dîtine ku zemînê wê pûç e. Ji lewra li ser wê, singên stûr daçikandine û li ser singan jî, ji kevirên mezin dîwar danîne. .

Wê gavê, bi awayê wî zemanî, ev bingeh, tiştekî zexm bû. Bi rastî jî dîwarên vê koşkê bi salan kevnar bû bû. Lê çiqas zeman derbas bûye, ewqas jî, ji te'sîra xwe kêm ne ma ye; ew diregên stûr, di bin axê de, riziyane... Ji lewra bingeh şemitiye: terk û qelîştek li dîwarên wê xuya kirine...

Muhendîsan gotibûn: Emê li hember vê talûkê çi bikin?! Gelek fikirî bûn.. Paşê dev ji hilşandina koşkê berdan; ji qoziyan ve, bingeh vekirin, hêdî, hêdî singên riziyayê derxistin, li şûna wan, kevirên granîtê xurt danîn, bi vî awayî bingehê koşkê guherandin û nuh kirin... Êdin, ev koşka kevn, li ser bingehekî nuh di ma... Bi xebata muhendîsên bi heş, hêja, ew koşk îro hêj xurt e û bê talûkeye...

Dîroka dewletan, jiyîn û mayina miletan jî mîna koşka Mosqiwayê ye; Bingehên nîzamên dewletan, awayên îdara miletan ên kevn, ji bona zemanê wan, her çiqas qenc hatibe dîtin jî, niha ew bingeh û awayê îdareyan qels buye; bêkêr ma ye...

Gotineke bav-pîran heye; dibêjin: «Civatên nuh, bixwe re stranên nuh tînin...» Çiqas roj derbas dibin, ew qas jî tovê însên têne guherandin û nuh dibin. Her bablîsk (qirn) bi xwe re fikren nuh, daxwazin nuh tîne. Ji wan re rastiyên kevnare, usûl û adetên dêrbasbûyî, bi kotekî nayê qebûl kirin... Ji tovê nuh re rêz û xezên nuhtir, bingehên qewîtir divê...

Miletê xwedî mezin be, mezinê wan bi heş bin, dev ji tiştên kevn berdidin; da ku rê ne din hilşandinê; ava û tevgêrên xwe hêj bêtir bi hekîmanî, hêj bêtir û adilanî çê dikin... Lê li hinek welatan, peyayên hukûmetê, terbiye û tevgêra milet fam nakin, yan jî na xwazin fam bikin. Hingî dîwarên koşka dewletê xerab dibe, li hawir dora wê qelîştek pêda dibin û her ke diçe, kûrtir dibin, kes guhê xwe nadinê... Ji bona vê yekê ye ku pêkhatina d e w l e t a n bi rû çiqas zexm û qewî xuya bibe jî, ji bo hilşandinê û xerabbûna wê pêkhatinê divê meriv heyret ne ke... Îrana kevn, ew Rûsya mezin zîr û zeber bûn; Almanya Bismarqan û Wilhelman jî xana xerab bû, çû...

(Paşî heye)

## Strana Kurdî

### O LO XERABO...!

O lo Xerabo...!
Bi Xwedê û bi pêxember tu xerab î..!
Ez û xerabê dinê
Li erdê binya mala
Em li hev rûniştin,
Me gilî kirin û me gazin hiştin.
Mi dî hêstirê çavê di reşbelek
Bi ser sing û berê te niqutîn..
Mi dî xilorekên devê çema
Ji xwe re dimiştin;
Teyr û tiyûrê zinaran
Li halê min û xerabê min
Diponiştin.
Mi dî miriyê goristana
Qemçelê xwe li serê xwe gerandin
Di hindurê tirbê xwe de rûniştin.
Mala bavê şewitiyo
Mi dî bi kubara sibehê re
Te derbek fedawiyê ber ba min da
Bi azana melê re
Te ez jî xwe re dikuştim.

O lo Xerabo!
Bi Xwedê û bi pêxember tu xerab î
Çava bavê min tê odê
Tu ji ber ranabî...
Malê dinyayê ne tiştik e
Tu xesîs î, tu qîmiş na bî
Mi sûnd xwarî, di dû çavê te re
Ez na kim mêra
Ez kunda neynim dewsa şêra
Ez bergîla girênadim
Ser alifa kihêla...

O lo Xerabo!
Ew Tilmizê... ew Tilmizê
Xweş Tilmizê
Mi sûnd xwarî
Ez terka çavê reş î belek na dim
Heya xwê şîn bê, qantir bizê...

O lo Xerabo!
Tu xerabê dinê
Min ji te re ne go:
Gula xwe me de bi sosinê
Mîka xwe me de bi bizinê
O lo xerabo... tu xerab î.

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## Ji Bergehên Kiswerê Frensizî Girava Reunyonê



BERGEHEK JI REUNYONÊ: GIR Û KEPEZÊN REUNYONÊ YÊN TÊR DARÊN QESIB



GENERAL LEJENTIYHOM Û SERGERINENDEYÊ REUNYONÊ M. KAPAGORI



ZEVIYÊN QAMIRÊN ŞEKIRDAR



JI BERGEHÊN HOLENDAYÊ: DERGEHEK

IMP. LE MIROIR D'ORIENT- BEYROUTH

Sal 1 — Hejmar 5

Duşemb 31 Gulan 1943

# ROJA NÛ

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lireyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

# HEZAR BALAFIR DU HEZAR TON BOMBE

## Bajarê Elemanî Dortmund Ji Nû ve Bi Awakî Dijwar Hatiye Bombardiman Kirin

Londre — R: Wezareta brîtnî a hewayî dide zanîn: Refên brîtanî ji nû ve û bi awakî hêj ne dîtî dest bi bombardimana bajar û hêjagehên axa Rûrê kirine a têr febrîqe, destgeh û karxanan.

Şevêdî çekê brîtanî ê hewayî, hezar balafir şiyandine ser Dortmundê û lêxistine. Balafirên brîtanî ji du hezar tonî bêtir bombe avêtine vê şaristanê; bombiyine şewat û teqandinê ji eva mezin î xurt.

Heta niha bi carekî du hezar ton bombe li tu bajarî ne ketiye. Balafirvanekî gotiye ko şev bi ronî bû û her çar alî û armanc xweş dihatin dîtin; hema ko bomban cihên xwe girtin pê şewatine mezin çêbune, ne maze di roawayê bajêr de. Balafirvanekî din qise dikir û digot ko dengê teqandina bomban ji dûr ve dihatin bihîstin, stunên dû û dûmana 15,000 pî bilind dibûn.

Balafirên brîtanî ji Ingilistanê heta ko xwe bigihînin ser serê bajarê Dortmundê 700 mîl firiyane. Der meha gulanê refên brîtanî bi deh caran êrîşî erdê Germanistanê kirine. Ji êrîşa şevêdî 38 bombeavêj venegeriyane warên xwe.

## CENG & SIYASET

# DEWRAN

### Qada Derya Spî

Di pêşiya tevdan û bombardimanên hevalbenda de, di ser Behra-Spî û Sicilye, Sardinye, û Italya Nîroyî re, qiwetên Mihwerê bi xurtî dikin xwe biparêzin û pêşbiriya refên hevalbenda bikin, bi awakî ko ji wextê şerê Tûnisê û wêdetir ne dihate dîtin. Jê xuya dibe ko Mareşal Kesserling fermandarê refên elemanî li Italyayê, qerara xwe daye û Khergirava Italyayê ji êrîşan dê midafihe bike, ango elemana guhdane gazindên Serfermandariya talyanî û hatine hawara wan. Cihgirtiyê wezareta talyanî ê hewayê berî bi çend rojan ji Berlînê re elam dida ko qiwetên talyanî ên behr û hewayî, bi serê xwe, nikarin peravên erdê talyana, ji t'ada Hevalbenda biparêzin.

Bi vê elamdanê cihgirtiyê Wezîrê talyanî, ji elemana re dida seh kirin ko ev şer ji bona talyana bi winda bûna kişwerê talyanî qediqaye. Lê hêj Italya na xwaze çekê xwe deyne. Ji tirsa xeyd û zorkeriya elemana.

Bêşik şerdarî û Serfermandariya elemanî daye eqlê xwe heke midafiha kirina erdê talyana bi kêrî karên şerî tên an ne, û heke ev tiştê hêjaye ko eleman qiwetine mezin bêxin vî îşî. Her wekî terikandina Italyayê, xira bûna yekîtiya Mihwerê ye, eleman nikarî bûn dev ji Italyayê berdin.

Lê ko êrîşên refên Hevalbenda hêj xurtir bûn, eleman bi xwe jî dê bikevin haleke bê hêvî.

Nihû çekê hevalbenda ê hewayî bi paqijkirina pêşasêgehên talyanî mijûl e; ev pêşasêgeh jî, ji bona îro Serdinye, Sicilye û girava Pantelariyayê û ji bona sibe Korsika ye. Şerên hewayî en xurt yên ko di wan rojan de û di dora wan bender û giravan de çêdibin, manîdar û girane ne.

Heye ko Behra Edriyatîkê bi xwe jî dê bibe qada şer.

Balafirên hevalbenda di vê nîzikiyê de, bi du caran bi ser her du benderên vê behrê, bi ser Barî û Brendiziyê de girtine û hêjagehên wan şaristana bi xurtî dane ber bomban. Heke qiwetên Hevalbenda ketin Behra Edriyatîkê, perîşaniya talyana hêj mezintir bibe, ji ber ko ji roava û ji rohelatî derbên Hevalbenda ên giran dê bigehin wan.

Heta niha di şerên ko di ser behra Spî û peravên di wê re çêbûne 5.239 balafirên Mihwerê hatine xira kirin; û roja înê di nav saetkê de, refên hevalbenda li erdê û der şerên hewayê 113 balafirên talyan û elemanî pelixandine.

### Eniya Sovyetî

Di eniya Sovyetî de, li erdê Kuban, Donetz, Prel û Leningradê di nav wan roj û heftan de, şerine xurt û xwîndar çêbûne, lê hêj per de ne hatiye rakirin; perda ko şerên vê havînê vedişêre.

Bi rastî par li 19-ê hizêranê û pêrar li 22-yê hizêranê elemana bi hemî qiwetên xwe dirêjî Ordiya Sor kiri bûn.

Lêbelê di sala 1941-î de, derengmayîna êrîşa elemanî, ji ber şerê Yewnanistan û giridê bû; û sala 1942-an de, şerê Sebastopolê êrîşa elemana bi şûnda hiştî bû.

Îsal gelo çawa ye?

Ne wext e ko mirov lez û bez tiştekî bibêje.

Her hal êdî rewişa elemana ne ev e ko, ne nêrîn ne li pêş û ne li paş; û destê Urisa de qiwetine zehf mezin hene û ew besî perîşaniya Ordiyine xurt in.

Ji aliyê din nihû dûrî desta tiştek ne maye û refên hevalbenda ne biro û ne bi şev, dev ji erdên Mihwerê ber na din.

### Dawiya Şerî

Mr. Çorçil ji Qesra Spî derketiye û hatiya Sefareta Brîtanî; Serekwezîr nihû di Sefaretê de wê rûne. Mr. Çorçil gotiye lebatên sefaretê: Heye ko ev şer wê gelek dirêj bibe; û heye ko mîna şerê meyn yê 1914-1918-an, ji nişka vedê biqede; li Tûnisê eskerên elemanî yên ko bi çavsorî şer dikirin, bihnkê de dest ji berberiyê kişandine bûne komên hêsîran û xwe avêtine bexte me.

Her hal tû sebeb nîne ko em bawer bikin, dema xelas û serbestiyê bûye nîzing.

# GOTARA M. BENES

## Bi Şerê Zivistana Ko Bê Ev Cengê Xedar Dê Biqede

Şikago — R: M. Benes di bajarê emerîqanî Şikagoyê de peyiviye û gotiye.

Şerê zivistana ke bê dê bibe qirêna vî şerî a dawîn.

Di qada rûsî de qomandine zor wê çêbibin, girêdayî bi êrîşine Hevalbenda ên xurt û dijwar.

Serekcimhûrê Çekoslovakyayê bi ser ve zêde kiriye: piştî şkênandina Japon, Talyan û Elemana jî divê hevalbenda mîna berî bimînin destbrayên hev û dû.

Londre — Şevêdî balafirên dijmin xwe di ser axa Ingilistanê re tev ne dane.

Kap — R: (Efrîka Nîroyî) Mareşal Smuts gotiye: ev şer ji nişkekê ve wê bigehe dawiya xwe.

Vîşî — Dûhî êvarê Radyowa—Vişiyê ji nişka ve lal bûye.

Londre — Radyoa—Tokyoyê elam dida: Peyivên ko di navbira hikûmetên emerîqanî, brîtanî û japonî de, li ser gohartina hêsîran çêdibin, xweş pêş ve diçin.

# Qehremaniya Kurén Spertayé

## Emiral Sir Endriyû Keningham Qedrê Wan Diğire

Qahire — A.F.I. Emîral Sir Endriyû Keningham bi gotinine hêja qedrê deryavanên yewnanî girtine yên ko ketine şerê Behra Spî û tê de namûs kirine.

Londre — R: Heta niha refên hevalbenda 100,000 ton bombe avêtine erdê Germanistanê.

Berlîn — Serfermandariya elemanî îro piştî nîro mukir dihat, ko bombeavêjên brîtanî li Dortmundê xistine û pê xesarine giran çêbûne; zehf xelk hatine kuştin û brîndar kirin.

Londre — R: General Katru hatiye Londrê û bi hafa General De Gol ketiye û li ser teklîfa General Jîro pê re axaftiye.

Heke Frensa Şerevanî teklîfên General Jîro qebûl kirin heye ko General De Gol di nav wan rojan de, ji Londrê radibe û berê xwe dide Cezayirê, tevî şîretkerên xwe.

Londre — A.F.I. General De Gol roja duşembê telegrafek şiyandiye Genêral Jîro û jê re elam daye ko ew ber bi xelaseka vê heftê ve bi MM. Masiglî û Filip re dê bê Cezayirê.

# DÛRIK

## DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

### Mamo, Pismamo

Mamo ji Torê tê
Bihna gula jê tê
Sebra dotmam pê tê.

Lata reş hezaz e,
Singa gewr beyaz e,
Dêka te şambaz e,
Dosta te tolaz e.

Lata reş bi rê de
Pezka kovî tê de
Di nav gul û bihê de
Destê min d' ber piştê de.
Tama cinetê tê de.

### Ha Nayê

Ha nayê ha, ha nayê
Dû sozê xwe tu nayê
Biçûk e porbelayê
Serî j'zêra hilnayê
W'ez ban dikim tu nayê
Bi te'r ketim belayê
Ka sozê ko te dayê,
Ç'bkim j'malê dinyayê
Qelena gewra m'nayê
Kanî sozê te dayê

Havîn e l'nav rezayê
Li bin sihka mêwayê
Te dî bû mi dî bû
Tu l'ser banî xeynê bû
Tu b' derziya midyetî bû
Tu b' qezik mendelî bû
Tu b'teqîkî gulî bû
Tu b' xeftankî şamî bû
Dosta lawkê golê bû
Tu b'xort' xelkê'r bengê bû

Keçik sêva l' dikana
Ketye destê nezana
El'miye ramûsana
Xera kirin b'drana
Keçik sêva li sûka
Ketye destê biçûka
Xira kirin b' nenûka.

### ŞEREFO

#### Were kumê xwe!

Ev kum, ne kumê min e
Kumê hevalê min e.

Silêbînê bi av e
Siwar û peya da nave
Şeref lawê Eyşikê
Kum qetandin bi şilfikê
Avêtin qeza Dêrikê.

Silêbînê bi tehlik e
Şeref ban kir:
Ev kum ne kumê min e
Kumê min ji hiriya berxik e.

Silêbînê bi rê ye
Kum qetandin bi kêrê ye
Avêtin qeza Dêrê ye
Lo Kurdo! were kumê xwe...

# DEMA NIHA

## HATINA GENERAL DE GOL

General De Gol duhî hatiye Cezayirê. General Jiro, Katrû nimînendeyên brîtanî û emerîqanî çûne balafirgehê, pêrgîna wî. General Jiro gote General De Gol: daxwaza min a mezintir yekîtiya hemî qiwetên Frensayê ye.

Nû-York — Destgehên emerîqanî wapora xwe a hezaremîn ji tîpê Libertî çêkiriye, Nihû di wan destgehan de hero şeş wapora têne çêkirin.

Eniya Roawayî — Refên brîtanî bi xurtî bajarê elemanî Wupertal dane ber bomban; xesarên ko gihane vê şaristanê zehf giran in 1500 ton bombe hatine avêtin, du nêçîrvanên elemanî yên şevger ji hatine xistin erdê, 25 bombeavêj venegariyane warên xwe.

Eniya Sovyetî — Bombeavêj û topên elemanî ên giran Lênîngradê bombardiman dikin.

Çekê sovyetî 22 bombeavêjên elemanî avêtine erdê. Der axa Volxov û Kubanê topçiyên her du aliya li hev û du dixin. Di Bakur-rohelatê Novorosiskê de şer dom dike. Di nav hefteke de refên sovyetî û topên balafirşiken 456 mekîneyên elemanî anîne xwar.

Eniya Behra Spî — Balafirên hevalbenda ji nû ve hêjagehên bender û bajarên talyana ên eskerî û nemaze yên Serdinya û Pantelariyayê bombardiman kirine.

Eniya Pasifîkê — Leşkerên emerîqanî di girava Atuyê de qiwetên japona ên mayîn jî qelandine û ev girav bi timamî vegirtine.

## DI RADYOYÊ DE GENERAL DE GOL PEYIVIYE Û GOTIYE

Zehmet bû, gelek zehmet; lê dawî hemî frensizan dil û gotina xwe kirine yek û kişwerê Frensizî gihaye yekîtiya xwe.

Welatê me hatiye dizîn, miletê me ketiye nav lepê neyaran, peyayên me di bin nîrê dijmina de ne, xortên me hatine mihacir kirin, jinên me di felaketê de ne zaroyên me perîşan û şerpeze bûne.

Berî her kesî, divê em herin hawar û gaziya wan, Hevalbendên me arîkariya me bikin, lêbelê divê em bi destê xwe bend û zencîrên hêsîriyê bişkînînin. Em kêmanî û hêja bûna xwe û yên dina nas dikin. Mezinahî heqê me ye.

Divê emê wê peyda bikin. Emê ji biniya vê kortalê derkevin bi yekîtiya miletî emê bigehin vê armanca mezin. Yekîtî ji bona şerê azahî û serbestiya Frensê... Yekîtî ji bona mezinahiya Frensê...

Yekîtî bi qesda ji nû ve ava û çelengkirina Frensê.

# DI CIZIRÊ DE

### Êdaniya Zefera Hevalbenda Li Tûnisê

Serekê giran Seîd Axa Deqorî ji me re dinivîse:

Li nehê gulanê, hemî Eşîrên Kurdan yên Erdê Cizîrê gihane hev û eydaniya Zefera Tûnisê kirine. Bi hezaran Kurd, siwar, û peya ji çar aliyên Welêt hatine Emûdayê û lê li hev civiyane.

Lê qurban hatine şerjêkirin û sifreyine mezin hatine danîn. Xort û serekên Kurdan bi kurdî û frensizî peyivîne û bi gotinine hêja qedrê Hevalbenda û leşkerên wan ên egîd û mêrxas girtine yên ko rêberên azahî û serbestiya dinyayê ne; û şahîke mezin di nav wan de çêbûye. Ev roja ha, di tarîxa Erdê Cezîrê de, tu cara naye ji bîra kirin.

Serbend û Zabitên frensiz û ingilîzî û mêmûr û karkerên sûrî bi hatina xwe dilê hazira şa kirine.

Londre — R: Kralê Yugoslavyayê çûye Qesra Bukinghamê, xatirxwaziya Kral û Kralîçeya Brîtanya-Mezin.

La Valet — R: Di girava Maltayê de işareta talukê hatiye dayîn, lê tu bombe ne hatiye avêtin

Londre — R: Radyoa Elemanî duhî êvarê digot ko wezîrê bilxarî yê hundirkariyê emir daye cuhiya û wan divê di nav sê rojan de, ji Sofyayê — payetextê Bilxaristanê — derkevin; an ne, ewê ji erdê Bilxaristanê dê bêne derêxistin.

# DER ENIYA SOVYETISTANÊ

### Ligora Elemana Qirênine Nû Destpêkirine

Berin — A.F.I. Eleman didin zanîn ko leşkerên rûsî di Velu kî-Lukiyê de bi xurtî êrîşan dikin; lê belê hawîrên sovyetî ev nûçe ne xurtandiye.

Moskû — R: Stalîn ji bona xatirgirtina M. Davis nimînendeyê Mr. Rûzwelt, Serekcimhûrê Emerîqayê, sifreyek daniye. Sefîrên Emerîqanî û Brîtanî li Sovyetistanê; M. Litvînof û zehf nimînendeyên hevalbenda ên bilindpaye lê bûn. Mêvana ji bona zeferê badînên xwe bilind kirine û vexwarine.

Waşington — R: Wezareta Emerîqanî a Behrê dide zanîn: Di girava Atuyê de leşkerên emerîqanî hêj bêtir zora xwe didin qiwetên japonî ên sergerdan. Zehf leşkerên japonî ên belavbûyî hatine qelandine. Duhî piştî—nîro di ser vê giravê re 6 nêçîrvanên emerîqanî dirêjî 16 balafirên japonî kirine û 5 bombeavêj xistine erdê; nêçîrvanekî emerîqanî venegeriyaye warê xwe.

Mekîneke emerîqanî a din jî şikiyaye, lê balafirvan selametiyê de ye.

# 400 BALAFIRA

### Dirêjî Sicilye, Serdinya û Pentelariyayê Kirine

Londre — David Brawin, nûçegihayê ejensa Royterî li Cezayirê dide zanîn ko duhî ji hêla jêrîn ve 400 bombeavêjên Hevalbenda hêjagehî û benderên Sicilye, Sordinya û Penteleriyayê dane ber agirê xwe.

Xesarine giran gihaye war û qerargehên dijmina û bi agirê bomban waporine Mihwerê berhewa bûne.

Nû Delhî — R: Bi awakî resmî didin zanîn: di eniya Aarakanê de, tiştekî hêja ne qewimiye. Duhî, nêçîrvanên brîtanî di erdê Şindwinê jorîn de, hêjagehên japona dane ber bomban.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## JI BERGEHEN HOLENDAYÊ



ŞARISTANA EMISTERDAMÊ Û COWA WÊ.



BAJARÊ ROTERDAMÊ Û PIRÊN DI WÎ.



LAHEY : DÎWANA CIWANMÊRAN.



HILVERSUM : DIBISTANEKE NÛJEN.

IMP. LE MIROIR D'ORIENT - BEYROUTH

1ère ANNÉE LUNDI 31 MAI 1943 NUMÉRO 5

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Sur le front occidental c'est encore la R.A.F. qui a joué le premier rôle de cette semaine. Dortmund le grand Centre industriel de la Ruhr a eu l'honneur peu enviable de subir le raid le plus violent de toute l'histoire: plus de 2.000 tonnes de bombes. Nous commençons à nous habituer à ces chiffres comme à des records sportifs sans trop en imaginer la valeur: 2.000 tonnes de bombes représentent cependant la charge d'un convoi de 400 camions qui sur la route occuperait une distance plus grande que celle de Djounieh à Beyrouth; cela représente pour Dortmund une ration de 8 kgs. de bombes par tête d'habitant. 3 jours après, Dusseldorf par mauvais temps subissait un raid presque aussi violent; vendredi Essen avait le sort de Dusseldorf; entretemps le grand centre d'optique Zeiss à Iena était à son tour attaqué. Pendant tout ce temps l'averse tombait sur la Sicile, Pantellaria la Sardaigne et le Sud de l'Italie en pluie plus fine mais ininterrompue,

Sur le front oriental les nouvelles sont assez confuses mais il semble bien que l'on soit à la veille des grandes offensives. Après l'accalmie relative de ces deux derniers mois le front s'anime et des attaques de grande envergure sont signalées de part et d'autre.

En Extrême Orient les japonais vont être chassés de l'île d'Atu dans les Aléoutiennes. Ils ont lancé une grande offensive contre la Chine et arrivés à 500 kms. de Chung-King ils semblent vouloir tenter d'en finir avec Chang-Kaï-Chek. Après quelques succès initiaux l'offensive paraît stoppée par les Chinois,

Sûr le plan diplomatique l'évènement sensationnel est la dissolution du Komintern. Sans doute a-t-on voulu par là renforcer dans les pays alliés l'union nationale pour l'effort de guerre, saper les bases du bloc ennemi fondé sur le pacte antikomintern et rendre ainsi la tâche plus facile aux satellites qui voudraient se détacher Quoiqu'il en soit cette mesure ne peut que renforcer l'Union des Alliés en conciliant leurs buts de guerre.

A Washington les entretiens Churchill-Roosevelt sont terminés et il ressort de la sobre déclaration du Président comme des deux discours de Churchill au cours de la Conférence que l'identité des vues est parfaite et que la lutte va s'intensifier simultanément en Europe et contre le Japon. La presse américaine parle de la possibilité d'une entrevue Roosevelt-Churchill-Staline.

## L'ARRIVÉE DU GENERAL DE GAULLE A ALGER

C'est hier, à 11 heures 15 que le Général DE GAULLE est arrivé à ALGER, accompagné de MM. René MASSIGLI et André PHILIP. A sa descente d'avion, il a été acceuilli par le Général GIRAUD et par le Général CATROUX, qui l'avait précédé à ALGER.

Quelques minutes après cette rencontre historique, le Général GIRAUD annonçait aux correspondants de presse que l'identité de vues était obtenue et faisait la déclaration suivante:

«Les conversations des derniers jours ont revélé que le COMITE NATIONAL FRANÇAIS de Londres et le Haut-Commandement Français en Algérie étaient arrivés à un accord.

«C'est par conséquent dans une atmosphère exempte de tout esprit partisan et dans le seul désir d'une unité totale de toutes nos forces que je suis heureux d'accueillir le Général DE GAULLE sur ce sol.

«Nous nous mettrons immédiatement au travail. L'heure n'est pas aux discours mais à l'action pour la FRANCE qui nous attend».

Aucun discours formel n'a été prononcé. Les deux généraux ont quitté l'aérodrome dans une grosse voiture noire, ayant le Général Catroux entre eux deux. C'est le Général Catroux qui fit fonction d'intermédiaire durant les négociations et c'est à lui que revient pour une grande part le mérite d'avoir réalisé cette Union.

Le Général de Gaulle et le Général Giraud auront un premier entretien aujourd'hui, Lundi à 14 heures. Le premier problème que les deux généraux étudieront est la composition du CONSEIL CENTRAL EXECUTIF que de Gaulle et Giraud présideront alternativement.

S'adressant aux journalistes, le Général de Gaulle a déclaré:

«Il est très important, tant du point de vue français qu'international que le Général Giraud et moi soyons parvenus à un accord que tous les Français souhaitaient ardemment et trouvaient trop long à se réaliser.»

Après le déjeuner offert par le Général Giraud, le Général de Gaulle alla déposer une couronne devant le Monument aux Morts.

Ce premier contact du Général de Gaulle avec la population algéroise a été l'occasion de manifestations d'un enthousiasme extraordinaire, d'autant plus remarquable que la plupart des quelques trois mille personnes qui se pressaient devant le square où le Général venait déposer une palme devant le Monument aux Morts avaient été prévenus on ne sait comment.

Malgré la chaleur, la foule avait rapidement grossi, difficilement contenue par la police municipale de la ville et par de véritables chaines de soldats des armées du Général Leclerc et de Larminat, solidement amarrés les uns aux autres par leurs bras nus, bronzés par le soleil du désert.

De nombreuses «Croix de Lorraine» fleurissaient les revers des vestons. Quelques jeunes gens et jeunes filles distribuaient des photos du Général de Gaulle. Les applaudissements éclatèrent lorsque la voiture du Général fut annoncée à l'extrémité de l'Avenue Pasteur. La police cherchant à dégager les abords du square, une légère bagarre eclate, la foule tentant de pénétrer par force dans le square.

Le Général de Gaulle traverse l'étroit passage et gravit rapidement la petite éminence qui conduit vers le Monument, suivi par son Chef d'Etat-Major particulier, le Colonel Billotte, le Capitaine Charles Roux et le Lieutenant Palewski.

Parvenu au sommet, le Général de Gaulle dépose une palme sans aucune inscription ni insigne et les acclamations de la foule redoublent quand le Général se retourne et lève les deux bras vers lie avec sur son visage une expression de joie profonde, comme pour dire: «Me voici».

Comme le matin à l'aérodrome, les traits de de Gaulle sont tirés par la fatigue et l'émotion. La cérémonie terminée la foule demeure encore un moment sur la chaussée; acclamant au passage quelques voitures militaires couleur de désert, dans lesquelles des soldats du Général Leclerc répondent aux vivats en agitant des drapeaux tricolore à Croix de Lorraine.

Puis ce fut la dispersion lente, mais l'atmosphère électrique demeura aux alentours. Dans un café où des cris: «Vive de Gaulle» retentissent a chaque instant, un homme en civil qui tentait de protester est passé à tabac et doit être emmené par la police; c'est d'ailleurs le seul incident deplaisant de la journée. Tous les visages respirent une joyeuse animation.

## LE CHEMIN DE LA VICTOIRE

*Le 28 mai le Docteur Bénès, Président de la République Tchécoslovaque et l'une des personnalités les plus éminentes du monde international, célébrait son 59ème anniversaire. A cette occasion, nous publions le passage final du message inaugural prononcé par le Président à la troisième session du Conseil d'Etat tchécoslovaque*

«Je conclus mon présent exposé un exprimant l'espoir, si non la conviction, que nous sommes déjà au dernier tiers de cette guerre et que le moment est proche où nous pourrons montrer réellement notre vraie valeur et notre capacité. La victoire viendra sûrement, et avec elle la construction d'un monde nouveau et meilleur. Mais n'oublions pas, que la victoire militaire, la nouvelle organisation de l'Europe, les nouvelles constitutions et lois qui régissent les Etats, ainsi que n'importe quels changements matériels, ne sont d'aucun profit si les hommes aussi n'en sortent moralement nés de nouveau de cette terrible crise, si nous ne comprenons pas que la catastrophe actuelle fut et est avant tout une crise *morale, tant pour les nations, que les classes, les partis et les individus* que chacun de nous, même aujourd'hui doit accomplir cette renaissance morale en lui-même d'une façon complète et solide, ou admettre simplement qu'il désire moralement appartenir au monde que nous détruisons par la guerre actuelle,

La plus grande force de notre nation n'a pas été, n'est pas, ne peut pas être, et ne sera pas physique — *elle a été toujours mainte nue par ses qualités morales.* Je crois que la guerre actuelle peut être et sera de nouveau gagnée par elle, parce que moralement elle s'est tenue au-dessus de tout ce qui a été fait avant, pendant et après Munich et de tout ce qui est fait aujourd'hui. Cette nation a, au cours de ses crises historiques les plus grandes, donné au monde et à elle-même Houss, Jijka, le roi George de Podyèbrady et Comenius Palatzky, Riguèr et Kollar, Masaryk et les Légions. *Elle a toujours été engagée physiquement, spirituellement et moralement dans une grande bataille, qu'elle a gagnée seulement au nom des valeurs morales qu'elle a toujours défendues.* Qu'aucun de nous ne soit porté à le prendre pour de simples mots de rhétorique, quand j'appuie aujourd'hui sur le fait que c'est seulement de cette façon que nous gagnerons la guerre actuelle, et que la victoire n'aura ni sens ni permanence si, après la guerre nous ne batissons pas de nouveau notre République véritablement dans l'esprit de ces grandes et glorieuses traditions tchécoslovaques.

---

Dans le camp français le Général de Gaulle précédé du Général Catroux et de MM. Philip et Massigli est arrivé hier à Alger. L'union de toutes les forces de l'Empire va se faire pour que les Français comme l'a dit le Général de Gaulle dans sa déclaration de Londres» puissent briser leurs chaînes de leurs propres mains».

Nul doute que la parfaite coordination des efforts alliés résultant de leur identité de vues ne nous prépare un été mouvementé et glorieux dont l'offensive aérienne est le prélude. B.

---

*Provisoirement,* LE JOUR NOUVEAU *paraîtra une fois par semaine, le Lundi.*

### LA PRESSE KURDE

*Nous signalons, à nos lecteurs s'intéressant au mouvement culturel KURDE, les journaux et périodiques kurdes suivants:*

**RIYA TAZÉ.** organe des Kurdes de l'U.R.S.S paraissant à Erivan.

**GALAWÉJ,** la plus grande revue littéraire kurde, paraitc haque mois à Bagdad, avec 80 à 100 pages de texte

**JIYAN** hebdomadaire politique et littéraire. paraissant à Souleymanié.

**HAWAR,** revue littéraire bi-mensuelle paraissant à Damas. Textes kurdes et français.

**RONAHI** Revue mensuelle illustré, paraissant à Damas.

## DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

*Nivîsevan* Grigorî Petrof — 2 — *Wergerandok:* Qedrî Can

Di kitêbên muqedes de tê gotin: «Di zemanekî de, di dîwarên seraya hukumdarekî zalim û qahir de pirsên ji agir nivîsî hatine dîtin: «MANETEKEL FARESI». Kesî mana wan pirsan fam ne kiriye. Danyalê hakim ev pirsên ha wisan tefsîr kiriye: «Ev nivîsana agirî xeber di de ko ewê pir tiştekî mudhîş çê bibe; mana wan eve ko dewleta kevn êdî xurtbûna xwe ya jiyînê wenda kiriye; bivêneve ewê xerab û kambax bibe...»

Împratora Romayê, Doqa Alba û selteneta wan a Îspanyayê... hukumdarîtiya Lûîyê panzdan li Fransayê... Rûsya Romanofan... Almanya Hohenzolleran, Awistirya Habsbûrgan... bûn qurbanê van fecaetan. Dîrokê, ji bona wan, hukmê xwe da: «Mane tekel faresî»

Van mes'eleyan bi ehmîyet bifikirin; mîna kurm û kêzikan di nav heriya derd û kulên xwe de ve ne gevizin. Li şûna vî tiştî, nuhkirina bingehê dewletê, ji wê şunda li stendina terbiya milet bifikirin..,

Dîrok, her vekî encam û fecaeta hinek dewlet û miletan dinivîsîne, ji bona bilind bûn û pêşveçûna gelek dewlet û miletan jî rûpelên zengîn û rengîn vedike...

Dîrok, ilmekî wisane ku: însanên mîna keriye teban (heywan), ji jîyina gêrik û moriyên bê şiûr xelas dike û ji wan re jîyineke qenc dide xuya kirin û bi çi awayî meriv xwedî hezar sen'etî dibe; xurtkirina tebayên dewletê; terbiya civatên milet nîşan dike.

### Merivên qehreman û Milet

Hinek dewlet buhranê ecêb derbas dikin, yan jî yekcar tebah dibin. Hinek miletên din jî, jîyina xwe di nav rindbûneke hakimanî pêk tînin. Divê ne tenê hukumdar, wezîr û meb'ûs bi van her du mîsalan ve bendewar bibin; gerek efradê milet jî, yek bi yek bala xwe bidinê...

Divê jin û mêr, xort û pîr, gundî û bajarî, yên bi heşê xwe, yên bi destên xwe bixebitin... giş li van tiştan bifikirin...

Xurt bûn û qelsbûna dewletan, şûnde mayin û pêşveçûna miletan ne tenê ji zanebûn û ne zanebûna serekan pêşve tê, na... Çiqas ew serek zana û nezan bin; çê, ya neçê bin, qehreman, ya zalim bin her yek ji wan, ayîneya miletê xwe ye: qopya giyanê qewmê xwe ye. Ew, ji nav koma xelkê xwe derketiye... Milet, çawa be, serek jî ew e. Ji bona vê yekê ku dibêjin: Her milet, îdareyeke layîqî xwe dibîne.

Ez hêvî dikim, hûn ji min re destûrê bidin, ezê li ser vê rastiya ku ne hatiye naskirin bi şekinim û hêj çêtir bidim ronîkirin... Çima ku ev çîroka dîrokî û felsefî ji berê de hatiye gotin û li ser wê gufte-gu çê bû ye. Çîrok, ev e; Dîroka miletan, kî di afirîn e? Hadîsên mezin ku di nav dewlet û beşerîyetê de çê dibe, kî pêşve di ajo? Kî tevdigerîne? Cihê cihê ferd çi dikin? Gelo her wekî mutefekirê ingilîz bi navê (Carlyl) gotiye, ev pêşve ajotin û tevgerî bi destên qehremanan yan bi xeyreta efradê milet giyan û bi sayeya germiya canê wan çêdibe? (Carlyl) bûye hevalbendê fikra ewelî û ew ispat kiriye. (Lef Tolstoy) jî fikra paşîn mudafee kiriye. (Carlyl) di kitêba xwe ya bi navê (Qehreman, û di dîrokê de qehreman) de, mezhebê qehremanan «Cult» û çanda qehremaniyê «Culture» ê belav di ke...

Bi gotina (Carlyl) be: milet mîna tebeqake kîlê ye; heke ne keve destên sen'etkarekî, tim bê şekl û bê hereket dimîne. Lê sen'etkar û qehremanê mîna Cezzar, Napolyon, Petroyê mezin, Soqrat, Mehemed,.. derkevin, karin vêkîlê bixin destên xwe û ji wê her tiştî û her şeklî çê bikin...

(Paşî heye)

### Strana Kurdî

#### Mûsa Xain

Me rev, me rev!
Mûsa me re
Te hetka min derxistî
Bi navê xwe re
Bi çeplê stiya Namo bigir,
Bibe j'xwe re, heta bi erdê Şamê,
Ez bi te re;
Û sozê min bi qerarê te re,
Heçî li dû sozê xwe vegere
Bedîn bimire li ser riya bêdîna here
Mûsa xain, bextê dinyayê ne wiloye
Ne bi zirta ye
Û ne bi forta ye
Ne bi çefiya egêl xwar kirina
Ser xaniya ye.
Do pêr, mi tu diye
Ji ber Hisênkî gurî tu reviyayî
Li ber çavê min
Weke mijê tifingê tu xuyayî
Tu sekinî li diyarê heftayê..
Mûsa me re, bext ne wiha ye...
Konê Mûsa xain, ji kona der e
Stûna navê zêrê zer e, par vî çaxî
Ez dosta Mûs xainê xwe bûm,
Sala vê salê ez canê min kirin
Nîşana gulleyê zer e.
Porê min î sor î sosinê
Li tûmka digere.
Mûsa, konê Mûsê min li ber avê
Ez li bextê te me, tê kaboka xwe
Bidî erdê
Paketekê lêxî, yekê bavê
Te rextê çarperçe
Bavê ser devziravê
Heya li me derkevin
Gaziya mala bavê...
Mûsa wayê, bext ne wihayê
Te dest ji Stiya Namo berdidayê
Te hişt li çol û çiyayê.

#### Emîno..

Ha wer werê Ha wer werê
Werê Emîno
Nav û gerden çi şêrîno
Emîno
Min û çema, çemê Bişêriyê
Mi dî Kelekvana Kelek berda
Li dû Gemiyê
Xwezî bi wê gavê û bi wê Kêliyê
Baqê temberiyê bikî
Hevalê vê keziyê.
Emîno ez bi çema ketim
Çemê Bişêriyê
Emîno werê min birevîne
Bavê Koçika Geydûkê
Bavê ser darê wê hewiyê.
Emîno ez bi Bişêriya xopan ketim
Li ber avê
Mi dî siwar û peya da bûn navê
Xwedê teala min û Emînê Ehmed
Bisitirînê
Ji weynê jinbavê.
Emîno, min û çema ketin
Çemê Bişêriyê
Xwezî wexta kolos xwar be
Ser kofiyê
Bi çeplê min bigirî
Bavêjî ser hewiyê...

## PÊJINÊN DINYAYÊ

### TRÊNÊN HEWAYÎ



Trênên hewayê di Ingilistanê de xwe pêkanîne û ko eskerên emerîqanî pê li erdê Ewripayê kirine ew dest bi xebata xwe û arîkariya yekîneyên emerîqanî bikin. Ev balafirên arîkariyê dikarin esker, zad û zexîre, çek û posat bînin erdê Ewripayê û bi sihwana



berdin cih daxwazan. Tezandek, yanî balafirên bêmotor jî di anîna eskeran de gelek bikêrhatî ne; balafirên adetî, balafirên bimotor wan dikişînin û tînin cihê ko lê esker divê dakeve erdê. Di wan balafiran de, bi çek û posatan ve 28 esker an 18 nesax û brîndar bi cih dibin.



JI BERGEHÊN HOLENDAYÊ: AVAHIYEKE NÛJEN.

## ÇAPA KURDÎ

### KOVAR Û ROJNAMEYÊN KURDÎ

Kovar û rojnameyên kurdî yên ko îro belav dibin ev in:

Reya-Teze: Li heftê sê caran û li bajarê Rewanê belav dibe; rojnameya kurdên Sovyetistanê ye. Bi zar û bi tîpên kurdmancî tête nivîsandin.

Jiyan: Kovareke edebî û ilmî ye; li serê her heftê carekê û li Sileymaniyê bi der têt. Bi zarê so ranî tête nivîsandin.

Gelawêj: Kovareke edebî û ilmî ye. Li serê her mehê carekê li Bexdayê derdikeve. Zarê wê soranî ye. Kovara Kurdî a mezintir û tekûztir e.

Hawar: Kovareke edebî ye. Ji sala 1933-an ve li Şamê û bi zarê kurdmancî tête belav kirin.

Ronahî: Ev du sal in, li Şamê dest bi derketinê kiriye. Zarê wê kurdmancî ye. Ronahî kovareke misewer e û li serê mehê carekê derdikeve.

Sal 1 — Hejmar 6

Duşemb 7 Hizêran 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

### Şkênandina Noqavan

Şerê şkênandina êrîşên noqavan dom dike. Nihû xweş xuya dibe ko deryavanên noqavên Mihwerê pêşiya tehsîrên lexeman de çavtirsiyandî bûne; û gava ew lexem dikevin dora wan, hema derdikevin rûyê avê û mirina xwe li ser rûyê behrê ji noqî avê bûnê çêtir digirin. Her çend jî, gava balafirên hevalbenda nîzîkî wan in, li rûyê behrê de man, rast bi rast xwe kuştin e.

Di nav deh rojên dawîn de balafirên brîtanî 30 noqavên elemanî xeriqandine; ew noqav gava rastî balafira hatine noqî avê ne bûne û xwestine di pêşiya derbên balafiran de, bi top û mitralyozan xwe biparêzin, lê ji wan ne hat. Heke noqî avê bibiwana, tirsa lexemên avîn hebû yên ko balafir davêjin û rûhê noqava distînin.

Şerê mezîn ê berî de jî, zora noqavên elemanî bi şkênandina çavên deryavanên wan, hati bû birin.

Rojnameke Ingilîzî li ser vê pirsê dibêje: Şerê Etlantîkê dom dike, lê emê di vî şerî de serfiraz bibin. Di vê qadê de em keti bûn tengiyê lê êdî ev demên zehmet jî bi şûnda mane; û bi himeta destgehên emeriqanî waporên ko hatine û têne çêkirin ji yên binavbûyî zehf bêtir in. ji xwe Lordê Emîraliya Brîtanî ê yekemîn Eleksander gotiye: ez cihê xwe ji yê Emiral D'onitz çêtir diecibînim.— D'onitz serfermandarê qiwetên elemanî yên behrê ye.—

Rojnama ingilîzî bi ser ve zêde dike û dibêje: Herwekî serekwezîrê me Mr. Çorçil gotiye: Emê di Asya û Ewripayê de şerî neyarên xwe bikin, û ev jî bê ko dijminên me bikarin çavê xwe vekin û bihna xwe bistînin. Armanca me serfirazî ye û rojek berî rojekê; ji ber ko wext tiştekî hêja û giranbiha ye.

### Ordiya Çaremîn

Çar milyon eskerên rûsî, leşkerine teze li ber dest in, yên ko di bin fermandariya Mareşal Voroşilof û Budyenî de talîm dîtine, hînî şerkirinê bûne. Ev eskerên he,di sala 1941-î û bihara 1942-an de ketine xidmeta welêt û xwe yighandine eskergehan.

Çekê rûsî ê hewayî jî xurtiya derbên xwe hefta dawîn bi xirakirina 400 balafirên elemanî pêşçavan kiriye.

### Bombardimanên Hewayî

Pêşiya zora bombeavêjên hevalbendan de, radyoyên Roma û Berlinê dane ber qîran û serekdewletekî bêteref jî di vê pirsê de, xwestiye pişta giliyên talyan û elemana xurt bike.

Ev e cihaba Brîtanya - Mezin: Mr. Îdin gotiye: Hevalbenda mekîneya Mihwerê a şerî, li her derê ko rastî wê tên bombardiman dikin.

# SED HEZAR BALAFIR BI MILYONAN BOMBE

## Karxaneyên Emerîqanî 100.000 Balafir, 1.200 Wapor, 1.500.000 Mitralyoz Çêkirine.

Nû-york — A.F.I. Radyoa Nû-yorkê dide Zanîn: Duhî êvarê febrîqeyên emerîqanî balafira xwe a sedhezaremîn çêkiriye. Ev tiştekî hêja ye û şayesteye ko mirov qala wî bike. Heke heta niha febrîqe û Karxaneyên emerîqanî 100.000 balafir çêkirine, Waporên me ên şerî jî sedî de sed bêtir bûne. Destgehwaporên emeriqanî 1000 maporên barkêş, 100 cengkeştî û 100 gemiyên banzînkêş çêkirine û ev yekîneyên he ketine behrê. Karxaneyên emeriqani yên çek û cebilxanan milyonek û heştî û çar hezar ton bombe, 100,000 topên balafirşiken û 1,500,000 mitralyoz jî çêkirine.

Moskû - R: Radyoa Moskovayê elam dide: 520 balafirên sovyetî ên dûrger, li hêjagehên erdê Orelê û li rêhesinan xistine, di nav stasyon û depoxaneyan de şewat û teqandinine mezin cêbûne.

Londre - A.F.I. Serekwezîr Mr. Çorcil vegeriyaye Londrê û di Cezayirê de bi general De Gol û jîro re axaftiye.

Londre - R-: Di Londreyê de işareta talukê hatiye dayîn û dengê topên balafirşiken hatiye bihistin.

## GOTARÊN

### GENERAL DE GOL - GENERAL JIRO

**Hemî Frensiza dil û Gotina Xwe Kirine Yek û Kişwerê Xwe Gihandine Yekîtiyê**

Londre - A. F. I. Duhî êvarê general de Gol di radyoa Cezayirê de peyiviye û gotiye: Komîta Frensizî ji bona xelaskirina Frensê hatiye danîn. Kar û xebata wê zehmet e, lê dilê wê xurt û zexm e. Emê bi hemî qiwetên xwe û di tenişta Hevalbendan de şerî dijmina bikin. Divê emê dil, dest û gotina xwe bikin yek.

Her tiştî, her fedakariyê ko ji bona xelas û serbestkirina Frensê hewceye emê bikin. Îro dengê welatê me nikare bête bihistin, xelkê me nikarin devê xwe vekin; ji ber vê yekê divê frensiz li kû derê jî bibin, arîkariya welatê xwe bikin; ji dil û can, bi eşq û heyecan bên arîkariya welêt. Îro hemî mêrên Frensê, şerevaniyên Frensê li ser rêkê dimeşin. Welatê me hewcedarî xebat, mêranî û bextê zaroên xwe ye. Ala me ji nû ve bi bayê zefer û serfiraziyê pêl dide. Nijadê me ji bona şerî hatiye afirandin û emê di şerên dijwar ên nûjen de xurtî û qudreta miletê xwe vejînin, û wî bigehînin mezinahî û serbestiyê. Mezinahî lê tê.

General Jîro di axaftina xwe de gotiye: Hemî mêr û şerevaniyên Frensê li ser rêkê li hev civiyane. Yekîtiya Frensê çêbûye. Êdî komên şerevaniyan nîne; komek, Frenseyek heye. Ev tişt ji bona elemana perîşaniyek e. Frensê ji nû ve ser û ala xwe bilind kiriye. Îro ko frensiz gihane hev welatparêz wê bigehin armanca xwe; armanca me serbestiya Welêt e; nabe ko êdî dijmin bi solên xwe ên pîs û mirdar, axa welatê me a pak û paqij rêvin bike. Me destê Hevalbenda girtine û di teniştа hev de Frense û Hevalbenda yek in, yekitiyek in. Ez silavan li egîd û şehîdên frensizî, emerîqanî, sovyetî û çînî dikim.

Frensizino!! Frensizên ko qehr û ezabine dijwar dibînin, xwe sist ne kin, xwe pêk bînin; dengên topên zefer û serfiraziyê ji Dunkerkê û heta Mersilyayê û ji St. Omerê û heta Stresburgê dê bêne bihistin.

Nihû derî û dergehên erdê Italyayê di pêşiya derbên me de vebûne.

Emê li gora taqeta xwe her tiştî bikin, da ko ev bombardimanên he, hêj xurtir û zortir bibin. Tiştê ko îro tê serê talyana û hêj jî, wê bê, çîredestiya Musolînî û hevalên di wî ne. Talyana bêbextî li Frensê kirine û ji ber vê yekê îro di nav bira me û wan de şer e. Musolînî bi xwe ji Hitler xwestî bû ko refên talyanî jî, têkilî refên elemanî bibin û herin li Ingilistanê xin û pê serbilind bibin.

Me ev tişt ji bîra ne kiriye. Musolînî û idara wî a kufkî û riziyayî ye ko ev belayên mezin, bê sebeb anîne serê miletê talyanî; ji xwe asasa tiştê ko em îro dikin, ev bombardimanên bajaran, hevalbendê Musolînî Hitler daniye.

Em dest je êsandina talyana na kişînin; û peyayên ko îro radibin û giliya me û ax û wah dikin, gava di ezmanan de, girtin û berdan di destê elemana de bû û ew radibûn û li bajar û saristanên Ewripayê dixistin deyin ne dikirin; û bi lalbûna xue dibiriqîn.

### Noba Me Hatiye

Îro weziyet gnheriye; noba me hatiye. Yê ko dest bi bombardimana bajaran kiriye, ne em in, Goring e. Werşova, Roterdam guwah û şahidên me ne. Elemana resma bombardimana wan bajaran girtî bûn, û di sînemeyan de ew pêş xelkê dikirin û dixwestin pê çavê dinyayê bitirsînin, xelkê diltirsiyandî bikin. Heta hilweşandin û qelandina nazism û fasizmê û terefdarên wan, em dev ji bombardimanên giran bernadin. Bila dijmin û tu kes me keve pey hêvî û niyazên bêdawî.

Qiwetên Mihwerê dixwestin me bigirin, me ew girtin.

Mr. Îdin li ser pirsa cêkrina waporan û cengê noqavan gotiye: Waporên bar û eskerkêş yên ko destgehên me de têne çêkirin her bêtir dibin; û hejmarên waporên me yên ko têne xeriqandin her û her hindiktir; û Noqavên dijmina yên ko têne binavkirin tim û daim Zêdetir dibin. Şerê Noqavan dom dike, hêj ne qediyaye: lê em dizanin ko tasa şihînê ber bi me ve giran bûye.

## DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

### Lê Gewrê

Lê gewrê man û man
Delalê man û man
Kiras-sorê hebreman
Gewra min j' mala Ferman
Serê memkê te hildan
D' paşila te de xwey dan.

Min serê memka giwaşt
Sê fincan av j' hatin xwar
Min fincanek jê vexwar
Û w'ez bûm wek zîvê al
Ez bûm wek markî teyar.

E'j kaşê Kûdê hatim xwar
L' Qeraşîkê bû hawar
S'ê siwar derketin bi xar
Yek lawê Elyê Biro
Yek lawê Hefsa Kûnxwar
Yek law' Mehmedê Biro
Karê oda xwe kiro

Lo erdiko beyaro
Min lê çandî xiyaro
E' çibkim j' dosta bi yaro
Min cotê memika xwaro
Yek sêv, yek pirtiqalo.

Lo erdiko hilmişti
Mi' sê gav lê rahişti
E' çibkim j' dosta b'dergisti

Heçî çû odê!
Xizmeta odê kiro
Nanê xwe b' xwe re biro
Tîî li ma'qûlê wilo
Ko te kev halê wilo

Hey gewrê, gewrê, gewrê
Tama memkên te xweş in
Mîna hejîra Hewrê
Ezê b' çeplê te bigrim
Bavêm seraya Stewrê

### Emîna

Emîna bûka salê
Te kinkê bi fesalê
Çavreşê çavxezalê
Eman n' ma lê Emîna

T' xwediya teşî glokê
Tak rêhana ber bihokê
Bihna t' bihna şmamokê
Ez l' cem rakim şev û rokê
Ez têr na bim ji vê glokê.

Ev sibe ye berxa kiş kê
Xilxalê te bi xiş xiş kê
Ev sibe ye berxa berde
Mêrê xerab kul û derd e.

Jina pîs t' laq d' dest de
Ti b' kêr nayî were m' berde
T' mîna nîzka nekelî
T' mîna nîzka serê sibehê
Çar tilya av di ser de.

# DEMA NIHA

## M. JEAN HELLEU

### Nimînendeyê Frensê ê Nû

Sefîrê Frensê Cenabê M. HELLEU bûye Nimînendeyê Frensê li Sûriye û Libnanê û ketiye şûna General KATROUX.

Madame JEAN HELLEU roja yekşembê ji Londrê hatiye Bêrûtê.

## SED & SIH BALAFIR

### Refên Sovyetî Elemana bi Sûnda Vedigerînin

Moskû.— R: Radyoa Moskovayê elam dide: refên sovyetî li Smolensk, Karaçev û Krasniyê xistine. Elemana bi 500 balafiran dikirin diRêjî Kurskê bikin; çekê me ê hewayê pêşbiriya wan kiriye û 130 balafirên elemanî avêtine erdê; 30 mekîneyên rûsî venegeriyane warên xwe.

Waşington — A. F. I. Serek wezîrê japonyayê M. Tojo gotiye: na be ko em xwe bixapînin; hal û rewişa me gelek zehmetdar e. Divê emê zorê bidine xwe, da ko bikarin welatê xwe ji perîşaniyê xelas bikin.

Moskû.— Danezana sovyetî a nîvê şevê elam dide: şer di Kuban û bakur — rohelatê Novorosiskê de dom kiriye. Di qadên din de rewişa eskerî bi awakî hêja ne guheriye. Refen sovyetî di eniyên şerî de 60 qamyan tejî esker an çek û posat dagirti xira, 3 depocebilxane ber hewa; 12 betariye top û qumbere avêjên çepera lal kirine. Di xeliça Fenlandyayê de du waporên dijmin hatine xeriqandin.

Çung-King— R: Danezana çînî elam dide: Qiwetine mezin ber bi Işangê ve dimeşin. Dora bajarê Şang-Yangê bi timamî hatiye girtin. Êrîşên japona yên ko li wê erdê destpê kiri bûn hatine şkênandin; ji hêla jêrîn ve 30.000 kuştiyên japonî li erdê mane.

Londre— R: Bombeavêjên brîtanî û emerîkanî meha borî 351 nêçîrvanên Mihwerê avêtine erdê.

Nû-York— A. F. I. Meha gulanê destgehên emerikanî 175 waporên bar û eskerkêş çêkirine; hemî bi hev re 1.780.000 ton mezin.

Waşington— R: Bi awakî resmî didin Zanîn: Noqavên emerîkanî di avên Rohelatê-Dûr de 7 waporên japonî bin av kirine; di nav wan de destriyorek jî heye.

Waşington— Hawîrên eskarî elam dane ko şerê Atuyê qediyaye; û qiwetên hevalbenda-bi awakî mezin dest bi êrîşî Kiskayê bikin.

Otawa - R: Serekcimhûrê Çekoslovakî M. Benes di pêşiya civat miletê Qenadî de peyiviye.

Londre R - Mr. Staford Krips, wezîrê britanî ê çêkirina balafiran duhî êvarê hatiye Irlanda Bakurî.

Berlîn - Ejensa elemanî D.N.B. mukir tê ko leşkerên sovyetî di nav 24 saetên dawîn de, der eniya Kubanê xetên elemena neqeb kirine.

Waşington - Mr. Joseph Davis, nimînendeyê serekcimhûr Mr. Rûzwelt li Sovyetistanê, duhî vegeriyaye Waşingtonê.

## 5 MILYON ESKER

### Qiwetên Rûsî Ên Mezin Hatine Eniya Rohelatî

Moskû — Çar Milyon Eskerên Rûsî li ber dest in. Mareşal Voroşilov û Budyenî ev esker gihandine û hînî şerkirinê kirine. Ev çar milyon şerevanî wê bikevin meydana şerî.

Nû-York — A.F.I. Serekcimhûrê Çekoslovakyayê M. Benes li Nû-Yorkê peyiviye û gotiye: Heye ko ev şer ji nişka ve biqede; ji ber vê yekê, Hevalbenda divê xwe ji bona karên piştî şerî pêk bînin. Di dawiya vî şerî de divê emê armancên jêrîn bêxin dest;

1 — Qelandina nezism û fesizmê;
2 — Hemi erdên ko naziyan vegirtine divê vegerin xwediyên xwe;
3 — Germanistan divê bitimamî bête ji çek kirin;
4 — Êşandina peyayên ko ji vî şerê xedar berpirsiyar in;
5 — Tezmîna zererên ko elemana gihandine milet û mirovan û welatên di wan.

Çung-King — Danezaneke çînî elam dide ko qiwetên çînî nihû direjî Itsû û Hupehê dikin.

Cezayir — Komîta Frensizî a bilind ya serbestiya Welêt civanek daniye, ev civan Çar saet dom kiriye, lê tu danezan ne hatiye belav kirin.

Londre— A.F.I. Meha Gulanê 30 noqavên dijmin hatine bin av kirin; û 120 heb jî, ji qiwet ketine.

Londre — R: Şerê Behra Spî lez û bez digehe dewra xwe a germtir; vegirtina girava Pantelariyayê îşê saet û rojan e. Balafirgeh û bendera wê giravê a biçûk bi derbên bombe û gulleyên Hevalbenda bi timamî xira bûne.

Moskû — R: Musolînî eskerên xwe ji Yewnanistanê dikişîne Italyayê; trêna pêşîn, tejî eskerên talyanî ji Yewnanistanê rabûye û berê xwe daye Italyayê.

## MIJDE

Eme yekem care be keretek sê genc le gence kanman beyekewe şehadetî (B. A.) wer agrin le Kullîyey Amerîkanî Bêrût. We êmeş lêre da nawyan be fexrewe bilaw ekeynewe, we bangîyan ekeyn bo becê hênanî ew xizmetaney be ser şanyaneweye; le gel tebrîk kirdinman be dilî germewe:

1. Muhemmed Ermexanî; (B. A.) le (kimya) da
2. Alî Saib; (B. A.) le (Adab) da
3. Qadir Xefaf; (B. A.) le (Hendese) da

Emane her sêkyan le gencanî (Iraq) in, xiwa serberzyan bikat we emsalyan zor bikat.

## DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

Nivîsevan Grigori Petrof — 3 — Wergerandok: Qedrî Can

Cengîz-xan, ji nav kaşê Asiyayê bi milyonan însan berev kir û da dora xwe; Çîn, Hindistan, Îran, Rusya kevn giş kir bin destê xwe. (Peter Amiyenski), ji bona Qudsê ji destê muslîmanan bistîne Ewrûpa qatolîk giş rakir ser lingan. (Martin Luther), refermasion çê kir. Neron û Kalîgolan Roma kevnar bin ax kirin. Siyaseta Bismarq û Hohenzolern Almanya hejandin.

Xulase, yên dîroka miletan û heta dîroka beşeriyetê giş çê dikin: kesên bi heş, zeka a xwediyê quweta manewîn in; ew kes ji: qehreman in !. Ramîses; Romolos, Themistokl, Luther, Bîsmarq û ên mayîn jî ev kes in... (Lef Tolstoy) jî, yekcar eksê vê fikrê derpêş dike; û dibêje: «yên ku jiyînê di afirînin û armanca hadîseyan xêz dikin û reng û karaktêrê wan didin, ne Napolyon in... Koma milet bixwe ye. Ji aliyê din (Tomas Carlyl) jî; dibêje: koma milet mîna kaya rizyayî li ser axê rijiya ye, merivê mezin, yanî qehreman, mîna biruskên, ji ezmanan dikevin, vê kayê bi hev didin girtin..! Koma milet didin jiyandin... (Lef Tolstoy), lewhakî din teswîr dike û dibêje: «Bifikirin, ku di deryayê de, gemiyek mezin, bi rê dikeve, li pêşiya gemiyê av, mîna şirîtekê, direve... Kî kane bibêje ku ev şirîta avê, gemiyê li pê xwe di kişîne? Aşîkar e ko ev herikandina avê ji ber paporê çêdibe û ji ber wê direve... esil quwet di paporê de ye... (Tolstoy), wisan dibêje: di miletekî de quweta heraketê pêda bibe û bimeşe, ew ji ber xwe hereket dike û bera ava pêşiya xwe dide; ji nav xwe peyakî dibijêre ko ew peya, jiyîn û mêla miletê îfade dike.

Xwediyê çîroka «Ceng û li hevhatin»ê (Lef Tolstoy) heke fikra (Carlyl) ya birûsk û mêraniyê qebûl bikira ewê wisan bigota: Belê, merivê mezin: qehremanek e.., birûskek e... Lê koma milet ne tebeqakê kîlê ye, ne jî kaye ke riziyayî ye. Ew, xwediyê wê birûskê ye ku ji nav xwe çê dike... Çi wextê ewrek, yan gelek ewr bi elektrîkê tije bin, birûsk, bi xwe çê di bin...

Heke di ewr de electirîk tune be, birûsk jî çênabe... Ewrê ku ne ji mija avî bin nacivin.., Milet jî wisan in... Heke di milet de mezinatî û merxasîtî hebe ji nav milet birûsk çêdibe û qehreman der dikevin...

Bi nêrîna pêşîn ev her du nezeriye mîna zidê hev xuya dikin. Ji nav wan divê yek bê bijartin. Gelo (Carlyl) rast dibêje, yan (Tolstoy)?? Ev zidiyeta di nav her diwan de tiştekî eşkere ye... Ya rastî, nezeriyên wan ne eksê hev in; ev her du rastiyê temam dikin. Ne lazime ku meriv bêje; ya (Carlyl) ya (Tolstoy) rast dibêje... Her diwan jî rast gotine... Her du, mîna ruyê peran e, her yek ji wan nîvekî rastiyê ye.

Qehreman, xelkê di înin he yecanê,.. Lê wan, bi heyecan û guriya agirê ku ji milet standine, di şewitînin... Her wekî em edesakê bêxin destê xwe... edese wisan çêbûye ku, çiqas ronayî di nav saheyekê de belav bûye, di yek nuqtê de dicivîne...

## Deqîqa Dawîn

Montevideo — R. Di Erjentînê de hikûmet hatiye gohartin.

Londre — R: Di Tûnis, Bizert û Pozê Bonê de 558 balafirên Mih werê—433 elemanî û 125 talyanî—ketine destê Hevalbenda.

Londre—R: Mêcir Etlê di peşiya civatmilelê Brîtanî de, xesarên ko di nav sê salên şerî ên pêşîn de gihane Ordiyên Kiswerê Brîtanî elam daye. Xesar ev in: kuştî 92,089, brîndar 88.294, winda bûyî 262,717, hêsîr 107.891 peya. 275,844 hebên wan ji xelkê Brîtaniyayê ne.

Londre—R: Noqavên brîtanî 6 waporên dijmin bin av kirine.

Moskû— Çekê rûsî ê hewayê hefta borî 752 balafirên elemanî xistin erdê.

Waşington— Qiwetên emerîqanî di dora girava Bugenvilê de 3 wapor û 15 balafirên japonî xira kirine.

Waşington—R: Di civana rojnamevanan de serekcimhûr Rûzwelt gotiye ko Stalîn jê re kaxezek şiyandiye, lê ne gotiye tê de çi heye.

Montevideo— R: Nûçeyên ko ji Erjentînê tên pêşçavan dikin ko zehf lekên Ordiya Erjontînê li Hikûmeta xwe rabûne. General Markez hatiye tayîn kirin fermandarê qiwetên cezadanê,

Moskû — R: Serfermandariya Sovyetî elam dide ko di nav sê mehên dawîn de, çekê rûsî ê hewayê 5000 balafirên elemanî avêtine erdê.

Londre—R: Sefîrê Emerîqayê Mr. Winan û yê Sovyetistanê M. Maiskî bi hafa Mr. Îdin ketine, wezîrê Brîtanya-Mezin ê dervekariyê.

## ÇAPA KURDÎ

KOVAR Û ROJNAMEYÊN KURDÎ

Kovar û rojnameyên kurdî yên ko îro belav dibin ev in:

Reya-Teze: Li heftê sê caran û li bajarê Rewanê belav dibe; rojnameya kurdên Sovyetistanê ye. Bi zar û bi tîpên kurdmancî tête nivîsandin.

Jiyan: Kovareke edebî û ilmî ye; li serê her heftê carekê û li Sileymaniyê bi der têt. Bi zarê soranî têtê nivîsandin.

Gelawêj: Kovareke edebî û ilmî ye. Li serê her mehê carekê li Bexdayê derdikeve. Zarê wê soranî ye. Kovara Kurdî a mezintir û tekûztir e.

Hawar: Kovareke edebî ye. Ji sala 1933-an ve li Şamê û bi zarê kurdmancî têtê belav kirin.

Ronahî: Ev du sal in, li Şamê dest bi derketinê kiriye. Zarê wê kurdmancî ye. Ronahî kovareke misewer e û li serê mehê carekê derdikeve.

1ère ANNEE — LUNDI 7 JUIN 1943 — NUMÉRO 6

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur-Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

L'évènement le plus important de la semaine est l'accord survenu le 3 Juin entre le Général DE GAULLE et le Général GIRAUD et la création du «Comité Français de la Libération». Ce Comité de la Libération est présidé par les Généraux DE GAULLE et GIRAUD ; il est composé en plus des Généraux GEORGES et CATROUX, de MM. MASSIGLI, André PHILIP et Jean MONNET ; deux membres restent à désigner.

Cette date du 3 Juin restera l'une des plus importantes de la guerre et une date capitale de l'Histoire de France. Depuis le 3 Juin l'Empire Français tout entier est entré dans la guerre de la Libération; avant même que les conversations d'Alger n'aient abouti, la flotte française d'Alexandrie était entrée dans la lutte plaçant ainsi la marine française au 3me rang des marines de guerre des Nations Unies. Déjà le Comité de la Libération a pris quelques mesures importantes en remplaçant à de hautes fonctions les éléments douteux; c'est ainsi que Général CATROUX dont les qualités d'homme d'Etat ont fait merveille dans la préparation et l'aboutissement des conversations d'Alger est nommé Gouverneur Général de l'Algérie et placé à la tête de la «Coordination des Affaires Musulmanes». Il faut croire que la Syrie et le Liban sont une grande école pour nos hauts représentants puisque Mr. Gabriel PUAUX qui avait laissé ici un excellent souvenir est nommé Résident Général au Maroc.

Sur le front d'Europe rien d'important à signaler. Le bombardement méthodique de l'Italie du Sud et surtout de la base de Pantellaria se poursuit. Un convoi italien a été attaqué et en partie détruit près du Cap Spartivento; pas de grand bombardement en Allemagne depuis le raid massif contre Wupperstal à la fin de la semaine dernière, mais attaque quotidienne des voies de communications en France, en Belgique, en Hollande.

En Russie très grande activité aérienne qui coûte cher aux Allemands; raid de 500 bombardiers contre la base d'Orel.

En Chine la 5ème offensive de grande envergure contre Chunk-King a échoué et les Japonais se trouvent dans une situation dangereuse au sud du Yang-tsé-Kiang.

A la veille des grands événements militaires qui se préparent, l'Allemagne vient de subir un échec sur le plan moral: le dernier gouvernement isolationniste d'Amérique, celui de l'Argentine vient d'être renversé par un mouvement révolutionnaire qui s'est fait aux cris de «Vive la Démocratie»

L'Allemagne a perdu la guerre sur le plan moral et diplomatique. Elle va la perdre sur le plan militaire.

B.

## Les DEPECHES de la NUIT

ALGER: — C'est dans un remarquable enthousiasme patriotique que s'est déroulé hier matin le Congrès Algérien de la France Combattante groupant plus de 4000 membres des associations de résistance telles que «Combat» «Groupe d'action socialiste» etc. dans la salle du cinéma Majestic.

Cette manifestation n'avait aucun caractère officiel ayant été prévue avant l'accord consacrant la formation du Comité Français de la Libération.

La cérémonie de l'intronisation du Général CATROUX dans ses nouvelles fonctions de Gouverneur-Général d'ALGERIE s'est également déroulée hier.— Le Général CATROUX est arrivé précédé et suivi par une escorte de spahis en grande tenue. Il fut salué par les applaudissements enthousiastes des délégués et du public. Très à l'aise au milieu de cette foule de personnalités coloniales et musulmanes, le Général CATROUX prononça une courte allocution.

### Front de Méditerranée

L'Amirauté Britannique communique que les sous-marins de la Marine Royale opérant en Méditerranée ont encore coulé 6 navires ennemis au cours de la semaine qui vient de s'écouler, entre la Côte d'Azur et la Sicile.

### Front de Russie

La semaine qui vient de s'écouler a coûté à la Luftwaffe 752 appareils abattus en combats aériens ou détruits au sol, soit une moyenne de plus d'une centaine d'avions par jour pour le seul front oriental. Les Russes ont, pour leur part, perdu 212 avions au cours de cette même période.

Hier encore, 27 avions allemands étaient détruits dans le secteur de LENINGRAD que la Luftwaffe attaque toujours avec persistance. 22 bombardiers ennemis ont été descendus en combats aériens et les 5 autres par la D.C.A. soviétique.

EN CHINE les troupes du Maréchal TCHANG KAI CHEK exploitent leurs succès dans le HUPEH. Les Chinois ont coupé la retraite aux effectifs japonais mis en déroute dans la région de la ville d'Itou, au sud d'Ichang et sont en train de les décimer.

Dans le Honan, l'ennemi a tenté de franchir le fleuve jaune après une violente préparation d'artillerie mais il a été repoussé sur toute la ligne après avoir subi de lourdes pertes.

## L'ITALIE SE DEBAT

*En entrant dans la guerre, l'Italie s'était attendue à gagner des territoires et des honneurs, rapidement et facilement. Jusqu'ici, elle a perdu des soldats et des colonies, durement et implacablement. Pour elle, la défaite de la Tunisie était une catastrophe. Voilà pourquoi sans doute, elle insiste sur les pertes subies par les Alliés, sans sentir la maladresse qui consiste à parler dans ses émissions des 3.000 blessés britanniques que le Général Alexander vient de visiter en Afrique, infime partie des pertes subies par les Alliés, alors que la campagne de Tunisie vient de coûter 250.000 hommes à l'Axe, rien qu'en prisonniers.*

*Les pertes de Tunisie — non pas celles de l'Axe, mais celles des Alliés — reviennent donc dans les dernières émissions de Radio-Rome, avec une persistance surprenante. C'est que Rome n'ose plus parler des perspectives d'avenir, ni du passé, c'est qu'il cherche désespérément des sujets de propagande, pour rendre un peu de courage au peuple italien. Et agissant selon le vieux principe qu'une bonne peur est un moyen infaillible pour faire marcher un peuple, Radio-Rome agite le spectre du communisme.*

*On aurait pu penser, naivement, que ce spectre aurait perdu de volume par la dissolution de l'Internationale Communiste. Il n'en est rien. Parmi les cent commentaires insidieux diffusés à ce sujet par les postes italiens, choisissons ce compte-rendu d'un discours du Quisling grec:*

*« Le Président du Conseil Grec vient d'exprimer sa reconnaissance aux autorités allemandes et italiennes qui font preuve d'une parfaite compréhension pour la Grèce et défendent le pays contre la menace bolchévique» S'imagine-t-on les Grecs, mourant de faim dans leur pays pillé par les troupes de l'Axe, désirant la protection de ces même troupes contre la lointaine Russie ? Ils la désirent si peu que les partisans grecs multiplient les actes de sabotage et les attaques armées contre ceux qui ne sont pas plus en sécurité en Europe occupée que dans leur propre pays.*

*Car l'Italie sent le sol se dérober sous ses pas, dans le sens propre et figuré du terme. Chassés d'Afrique, harcelés en Yougoslavie et en Grèce, les Italiens sont pilonnés chez eux par les bombardiers anglais et américains. Et la radio fasciste, qui avait couvert de lauriers Bruno Mussolini quand il allait déverser le feu et la désolation sur les enfants d'Espagne, s'apitoye maintenant sur le sort des victimes de la guerre aérienne :*

*«La barbarie des bombardiers anglo-saxons qui se sont attaqués à la maison des enfants de Reggio en Calabre est sans précédent», entendions-nous, «Ils ont eu la satisfaction de tuer 33 nourrissons, 14 nourrices et une religieuse. Les églises de Sainte Lucie et de Saint Paul ont été endommagées.»*

*Car il est barbare de tuer des nourrissons italiens et d'endommager des églises italiennes, alors qu'il n'est pas barbare de tuer des enfants éthiopiens et de détruire la Cathédrale de Guernica, en Espagne. Les Italiens auraient-ils déjà oublié ces mémorables exploits de leur « Reggia Aeronautica» ? Il est permis de le supposer en écoutant cette perle :*

*«Les journaux espagnols estiment qu'il faut faire l'impossible pour éviter les ruines et les pertes infligées à la population civile. 99 fois sur 100, ce sont des objectifs non militaires qui sont atteints par suite du manque de précision des bombardements. Les journaux espagnols proposent donc aux chefs d'état d'arrêter la guerre aérienne».*

*Les bombardements dévastent maintenant les pays de l'Axe : il faut les arrêter. Quand ils ne dévastaient que la Pologne, l'Angleterre, la France, la Hollande, la Russie ou l'Espagne, ils étaient un «moyen légitime de guerre» et même un moyen humain, la guerre totale étant la guerre la plus rapide.*

*Eh bien : les Alliés n'arrêteront pas leurs bombardements : maintenant qu'ils ont conquis la supériorité aérienne, ils s'en serviront. Et l'Italie, atteinte dans son potentiel humain et dans son patrimoine colonial, le sera également dans son sol national en attendant la défaite complète*

*Lucie Vidal*

MEDITERRANEE— 6 navires ennemis ont été coulés par des sous-marins britanniques

## S. E. M. JEAN HELLEU

EST NOMMÉ DELEGUÉ GÉNÉRAL ET PLÉNIPOTENTIAIRE DE LA FRANCE AU LEVANT EN REMPLACEMENT DU GÉNÉRAL CATROUX.

## POÈME KURDE

### LE PATRE

Viens, rêvons ensemble,
Couchés sur ce sable,
Chauffés par la lumière ardente
De cette lumineuse tente,
Consolés par le vent tiède,
Caressant par nos yeux
Les étoiles
Accrochés à cette belle toile
Les mains dans les mains,
Les lèvres sur les lèvres;
Frileux
Comme des corps en fièvre.

Oubliant le temps
L'hiver, l'automne,
Le printemps.
La souffrance, la gaîté
La chaleur de l'été.
Pour sentir l'amour
Le plus chaud soleil
Doux comme le miel
Et piquant comme l'abeille.
Trompeur
Comme l'envie des choses
Réel
Comme les épines des roses.

Ainsi parla le pâtre
A sa belle
Les hirondelles passaient
Dans le ciel
La belle répondit :
Embrasse-moi, je te quitte,
Tu es pauvre
Et comme le vent, sans gîte.

DR. BEDIR KHAN



*Provisoirement,* LE JOUR NOUVEAU *paraîtra une fois par semaine, le Lundi.*

## LA PRESSE KURDE

*Nous signalons, à nos lecteurs s'intéressant au mouvement culturel KURDE, les journaux et périodiques kurdes suivants:*

**RIYA TAZÉ.** organe des Kurdes de l'U.R.S.S paraissant à Erivan.

**GALAWÊJ,** la plus grande revue littéraire kurde, paraitc haque mois à Bagdad, avec 80 à 100 pages de texte

**JIYAN** hebdomadaire politique et littéraire paraissant à Souleymanié.

**HAWAR.** revue littéraire bi-mensuelle paraissant à Damas. Textes kurdes et français.

**RONAHI** Revue mensuelle illustré, paraissant à Damas.

# JI BONA WELÊT



## AZAHÎ Û SERBESTIYA AXA BAV Û KALIKAN

### BAV BI KEÇA XWE RE DIÇE ŞERÊ ELEMANA

JI BONA SERBESTÎ, AZAHÎ, RAHETÎ Û MEZINAHIYA WELATÊ XWE EV HER DU SIWARÊN DELAL KETINÊ XIDMETA ESKERIYÊ.

Ji dê û bav û kalikên xwe ev Ûris in, û nedixwestin ko biyanî, elemanên zalim û zorker, di erdê wan de rûnin; wan bêxin bin hikmê xwe û axatiya wan bikin. Keçikê gatî bû bavê xwe : tu pîr î... Bav lê vegerand û got: tu keçik î û zaro yî. Paşî, li halê welatê xwe nêrîn, dengê top û balafirên dijmina bihistin û gotine hev û du: Em her du bi kêr tên, li hespê xwe siwar bûn û berê xwe dane meydana şerî û bi vê mêraniyê Sovyetistanê pişta dijminên xwe şkênandiye.

Sal 1 — Hejmar 7

Duşemb 14 Hizêran 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

### Gotara Serekwezîr

Wezîrê Brîtanî ê yekemîn Mr. Çorçil, îro gava ket pêşiya civatmiletê Brîtanî, lebatên vê civatê çepilka li hev xistine û bi germî qedrê serekwezîr girtine, yê ko piştî çûna xwe Emerîkayê ev cara ewil e ko tê pêşiya lebatên Civatmiletî.

Mr. Çorçil li ser şerê Tûnîsê kitkitên jêrîn elam daye: Di şerê Tûnîsê de 300,000 eskerên Mihwerê ji qiwet ketine; tê de 248,000 hêsîr û 50,000 kuştî hene; 638 elemana bitenê dikarî bûn xwe ji erdê Tûnîsê xelas bikin, piraniya wan bi balafiran.

Serekwezîr gava qala leşkerên Hevalbenda kiriye, bi pirsine hêja pesnê wan daye û gotiye:

### Mêraniya Frensiza

Eskerên frensizî jî bi mêrxasî şerî dijmina kirine, bi hezaran hêsîrên elemanî û talyanî girtine û bîreka rojên mezin yên Foş û Klemansoyê vejandine. Hemî eskerên Hevalbenda, eskerên frensizî, emerîkanî û brîtanî qîma xwe bi nefsa xwe û bi fermandarên xwe anîne. Ji qiwetên brîtanî 35,000 esker ji qiwet ketine, tê de kuştî û brîndarin hene.

Tu şik nîne ko zeferên Stalîngrad û Tûnîsê ji bona elemana du derb û mexlûbiyetine mezin in û di şerên dîrok û tarîxa elemanî de, emsalên wan nîne. Her wekî generalên elemanî bi xwe gotine, şerdarî û serfermandariya elemanî bawer dikirin ko leşkerên Mihwerê heta meha tebaxê wê bikarin di pêşiya Ordiyên Hevalbenda de pê bidin erdê; lê hisabê wan rast derneket.

### Ji Nişka Ve

Ordiya Mihwerê, — eskerên di wê ên çavsor û şerût yên bi çekine xurt û nûjên bi çek kirî, — di pêşiya derbên me de, ji nişka ve xwe sist kirine û dest ji şerî kişandine.

Ev rewişa wan a rûhî; bi derbekê çavtirsiyandî bûna wan tiştekî zehf bi ehemiyet e, divê li vê niqtê hûr bête meyizandin. Tiştekî wilo piştî şerê Yênayê û şerê 1914-18 an de jî li Ordiyên elemanî qewimiye. (Şahiya lebatan).

### Emê Zora Wan Bibin

Me xwe kar kiriye û emê zora dijminên xwe bibin û wan bişkînin; û tu car şik ne ketiye dilê me; û me her dizanî bû ko heke em bi serê xwe jî bimana me ew bişkênanda. Di dema aştiyê de hin miletan—em jî ji wan in—xwe ji bona şerî kar ne kiri bûn, Lê îro çavê cihanê dibîne ko ew miletên he bi hilgirtina barê vî şerî qels ne ketine, xwe sist ne kirine; berekis xurt bûne û bi ciwanî û mêranî vî barî hildigirin.

# PANTELARIYA KETIYE

## HEVALBEND PÊ LI ERDÊ TALYANA DIKIN

Girava Pantelariyayê bi bombardimanên Hevalbenda bêhal ket û xwe avêtiye bextê Hevalbenda. Hevalbenda piştî ko kişewerê Talyanî bi timamî zeft kiriye nihû pê li erdê talyana dikin; Pantelaiya hatiye vegirtin.

# ENIYA DIWEMIN

## BI BOMBARDIMANÊN XURT DESTPÊ KIRIYE

Cezayir — Refên brîtanî û emerîkanî ên mezin, ji bombeavêjên giran hevedudanî dirêjî erdê talyana kirine û li Serdinye, Sicilye. Mesine, Regiyo. Pantelariya û San Giovaniyê xistine; bombe li dok, depoxane, avahiyên eskerî û li kar û barên wan bajar û benderan ketine û xesarine dijwar gihandine hêjagehên Mihwerê. Refên Hevalbenda ji hêla jêrîn ve 97 balafirên neyar avêtine erdê û xesar gihandine zehf mekîneyên dijmin ên din.

Cezayir — General Katrû şevedî di Cezayirê de peyiviye û gotiye: Tiştê ko çêbûye ne yekîtiya du koma ye, lê belê yekîtiya Frensê bi tevayî. Frense jî nû ve dê vegere mezinahiya xwe a berê.

Hêvî û niyazine teze, dilê welatparêza xurt kiriye. Dinyayê jî nû ve bawerîya xwe bi qudreta Frensê aniye. Di bin siha alekê de heta dema serfirazîyê emê şerê dijmina bikin. Her bijî frensê.

# Bombeavêjén Qerargeha

## Maltayê Bi Şev û Ro Li hêjagehên Talyana Dixin

La Valêt — R; Bi awakî resmî elam didin: Nêçîrvanên brîtanî ên bombeavêj di nîro - rohelatê Sîcilyayê de - erdê talyana - dirêjî qerargeha Pazaloyê kirine û lêxistine; bombe xurt û rast li avahiyên eskerî ketine. Refên brîtanî ên din di nîzîkî Kamisoyê de rê û pirên dijmina û der Kap Stiloyê hêjagehên neyaran ên din dane ber bomban. Di girava Maltayê de işareta talukê hatiye dayîn lê tu tişt ne qewimiye.

Moskû — R: Çekê rûsî ê hewayî balafirgeha elemana a Brianskê bombardiman kiriye.

Waşington — General Marşal, serekê şerdariya emerîkanî, vegeriyaye Waşingtonê.

Londre — R: Sefîrê Emerîkayê Mr: Winan û yê Sovyetistanê M.Maiski bi hafa Mr. Îdin ketine, wezîrê Brîtanya - Mezin ê dervêkariya.

Moskû — Serfermandariya Sovyetî dide zanîn ko di nav sê mehên dawîn de çekê rûsî 5000 balafirên dijmin avêtine erdê.

Ev xesarên mezin pişta çekê elemanî ê hewayî şkênandiye û ji ber vê yekê eleman planên xwe ên êrîşan edilandine.

Bi şev û bi ro di ser eniyên şerî re, qomandine hewayî dom dikin û girtin û berdan destê refên sovyetî de ye.

Hin hikûmetên bêteref bawer dikin ko dewletên demokrat, miletên ingilîz û emerîkanî, nijadê Engil-sekson zora dijminên xwe bibin jî, piştî vî şerî wê bikevin jarî û qelsiyê. Ne wiha ye; piştî vî şerî emê bibin hêj xurtir û qewîtir û bawariya me bi qedera miletê me her di kûrahiya dilê me de ye.

Serekwezîrî di pişt re qala şerî kiriye û gotiye: di hemî eniyên şerî de emê bi xurtî zora xwe bidin neyaran; bi bombardimanên hewayî, û bi çek û awayên din êrîşî wan bikin.

Mr. Çorçil li ser vexwendina Stalîn civanê Waşingtonê gotiye: em gelek dilteng bûne ko Stalîn nikarî bû bê û bikeve mijûlgeha me.

Wezîrê brîtanî ê yekemîn bi pirsine qedirgiran qala Ordiya Sor kiriye ya ko barê vî şerî ê girantir bi ciwanmêrîyeke ecêb hilgirtiye. Li ser yekîtiya kişwerê Frensizî gotinên Mr. Çorçil ev in; em têkilî şêwirên frensizên ko pê yekîtiya frensizî çûye serî ne bûne: lêbelê em gelek dilxweş û kamiran in ko General De Gol û General Jîro ev yekîtî birine serî û pê dilê hemî Hevalbenda xweş kirine û hîmê azahî, serbestî û mezinahiya Frensê danîne.

### Zora Wan Diçe

Li ser pirsa talûka noqavên dijmina Serekwezîr gotiye: Ev talûke hero hindiktir dibe. Îro destgehwaporên Hevalbenda li şûna gemiyeke binavbûyî 3 waporên nû çêdikin. Ji aliyê din, na be ko em bawer bikin ko a demên giran hatiye rakirin, emê hêj rastî wextine dijwar bên, lê tu şik nîne ko divê em pişta wan gavên giran bişkînînin, bê şik emê pê bikarin.

Mr. Çorçil jê pê ve, bi dilxweşî elam daye ko tevkariya emerîkanî û brîtanî gelek xurt e, ahengdar e û ko qelq û tevdanên eskerî hêj zortir û mezintir bûn, ew tevkarî jî, wê bibe hêj mezintir û firehtir; û şerdarî û serfermandariyên Hevalbenda hêj bêtir hev û du bibînin û li hev bieivin.

MEZINÊN DINYAYÊ



GENERAL DE GOL

## DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

### EYŞÊ

Mala te sergo ye
Eyşê dêranê
Mêrê te zaro ye
Eyşê dêranê
Bavê te mûro ye
Eyşê dêranê
Tiyê te hûro ye
Eyşê dêranê
Mala te bilind e
Eyşê dêranê
Jê pê ket mûm û find e
Eyşê dêranê
Tu rebena gund e
Eyşê dêranê
Mala te li nav mala
Eyşê dêranê
Mer' cîranê xala
Eyşê dêranê
Katib bi qurbanê
Eyşê dêranê.

### FATÎMÊ

Erê lê Fatimê lê
Xatûnê xanimê lê
Yasitar li vê bêbavê lê
Keçê mi te navê lê

Erê lê Fatimê lê
Fesalê bi kesimê lê
Xeşimê hakimê lê
Yasitar li vê bêbavê lê
Keçê min te navê lê

Îşev êvara înê
Mele dixwîne yasînê
Fatimê kar û barê xwe kir
Kil û mirêka tînê

Çavê reş e kil didê
Berê xwe da Mêrdînê
Hêdî, hêdî xwe dihejînê
Ba ber biska dixînê

Kilê çava diweşînê
Dilê xorta d' êşînê
Erê lê Fatimê lê
Xatûnê xanimê lê

Gava Fatim meşiya
Çarî bi dû de kişiya
Kil ji çava weşiya
Dilê xorta êşiya
Kul ket mala efendiya
Erê lê Fatimê lê
Xatûnê xanimê lê.

### OY OY

Emê henê çêkin
Emê henê di teştê kin
Oy, oy, oy, oy.

Emê li biskê bûkê kin
Li sinbêlê zavê kin
Oy, oy, oy, oy.

Zavê çû ye sûkê
T' anî hena bûkê
Oy, oy, oy, oy.

Zavê çû hemamê
Dixwîne Quranê
Ji bona îmanê

# DEMA NIHA

## Roja Miletên Hevalbend

Îro ceјna Miletên Hevalbend e, yên ko ji bona heq û serbestiya cihanê şerî zalim û zorkera dikin. Di hemî erdên Hevalbendan de şahînetine mezin hatine çêkirin û General De Gol û General Jîro di radyoa Cezayirê de peyivîne û bi gotarine hêja qedrê vê rejê girtine. Dilê hemî miletên ko heqê wan hatine şkênandin, û dilê Kurdan bi Hevalbenda re girêdayî ne û zefer û serfiraziya wan daxwaza dilê me a girimtir e.

Sentiyago de Şilî — Wezareta Şîliyê istîfa xwe daye; Wezareteke nû hatiye danîn.

Mikoşî — Mr. Kazî wezîrê brîtanî li welatên rohelatê navîn û xanima wî, piştî ko çend roja li Qibrisê mane, jê vegeriyane û hatine Misrê.

Waşington — Serek Benes beriya ko ji Emerîkayê rabe çûye cem Serekcimhûr Mr. Rûzwelt û jê xatir xwestiye.

Moskû — Sed balafirên elemanî dirêjî bajarê Gorkî kirine, 12 bombeavêjên elemanî hatine xistin erdê.

Nûçeyên Dawîn: Lampedusa ketiye. Çekê rûsî 648 balafirên elemnî xistine erdê.

## DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

*Nivîsevan Grigori Petrof* — 4 — *Wergerandok: Qedrî Can*

Ji civîna hezar tîrêjên rojê nuqtake ronî diçirise: ev nuqteya bi heraretê xwe, tiştên mîna kaxed, ka û êzingan dişiwitîne...... Kevir, cam û hesinî germ dike.

Her mêrxasê miletekî jî mîna edesekê ye, ew, di şexsê xwe de, quwet û weziyetên milet dicivîne û bi wan quwetan giyanê xelkekî bi milyonan vêdixe... Lê heke hewa bi ewr be, ji tîrêjên rojê bê par be, wê gavê tu edese nikare hebek berf bihelîne û nikare dilopek av germ bike...

Penîrê Îswîçrê, tenê ji çêlekên serê çiyan tê girtin û tê çêkirin... Merivên ku ji nav zeman û miletên muxtelîf derketine jî wisa ne. Ev, mîna bihna çîcekên miletên nuh bişkivîne, xweş e...

Napolyon, ne ji Çîna Kevn a sulhperwer, lê ji nav Frensa derketiye... Îngiltere, Darwîn xwedî kiriye. Wî jî bi navê «Şerê jîyînê» nezeriyak berpêş kiriye. Rûsya jî Tolstoy aniye meydanê.

Ev, di her zemanî de, di her cîhî de wisa e; yê kû Almanya kir şerê mezin, ne Wilhelmê divim bû... Lê rûhê Almanyê x a s i b û cengawer bûye; îfadeya Wilhelm, Bismarq û Hindenborxan. Nêron û Karaglan Roma kevn xerab ne kirin...

Her milet merivê bikêr tîne ser makîna îdareya xwe; gava yek ji wan tê ser kar, didin dû hal û sewiya milet a manewî. Di milet de tiştekî civandî yê hêja heye, tune? Yan tê civandin? Heşê milet, wîcdanê milet bilind dibe, nabe? Yan dirize jehirdayî dibê? Bi jîyîneke kêm û sefîl heba dibe, diçe??

Di vir de, karaktêrê her yekî ji me, awayê xebata her yekî ji me tê gotin. Em, di nav welatê xwe de, çi dikin? Di ser encama miletê xwe de çi rol (wezîfe) ê distînin?

Li deryayê jêrîn çend giravên mircanan hene... Mircan ji kilsê çêdibe. Tebakî biçûk, bi navê popîp, ji hundirê xwe, tiştekî îfraz dike... Kes bîr nabe ka ji vê îfrazatê, bi zeman ve, giravek cêdibe. Heta li ser van giravan însan jî bi cî û war dibe. Wekî dîn, dîsa li welatê jêrîn mûrînine biçûk peda dibin ku ev mûrî, ji bo însanê wî welatî afetek e. Malên wêderê teva hûrmûrê wan gişî dixwin... û însan mecbûr dibin ko ji ber wan hîcret bikin...

Vêcar em bêne ser hal û ehwalê welatê xwe; Xebata me ya di nav welêt de çi ye? Berê vê xebatê li xerabkirinê ye, ya li avakirinê?

Em, karin welatekî biçûk û feqîr nîşan bidin ku refah û bextiyariya welêt, şeref û rûmeta mileta bi vîna xelkê wê vê girêdaye... Ew welat xwediyê du milyon serî (nifûs) Fînlanda ye...

Fînlanda li bakurê Ewrûpayê ye. ?îqlîmê wê hişk e. Pir caran, bi mij û dûman e. Di buharê de, av û axa wê qeşa digire. Ji tebaxê serma destpê dike. Zemînê wê jî bêkêr e; pir cî hene ku bi zinarên granîtî hatiye girtin. Di nav welêt de bi navê maden tiştek nîne; Cot û çandinî pîr bi dişwarî çêdibe. Xelkê wê jî tu caran bi temamî ser xwe bûn (îstiqlal) ne dîtiye. Her car hinekan, li ser wan, hukum kirine. Miletê fîn ji xwe re «Suom» dibejin... Ji welatê xweyê nazenîn re jî «Suomî» yanî çirav...

## ÇAPA KURDÎ

### KOVAR Û ROJNAMEYÊN KURDÎ

Kovar û rojnameyên kurdî yên ko îro belav dibin ev in:

Reya-Teze: Li heftê sê caran û li bajarê Rewanê belav dibe; rojnameya kurdên Sovyetistanê ye. Bi zar û bi tîpên kurdmancî tête nivîsandin.

Jiyan: Kovareke edebî û ilmî ye; li serê her heftê carekê û li Sileymaniyê bi der têt. Bi zarê soranî tête nivîsandin.

Gelawêj: Kovareke edebî û ilmî ye. Li serê her mehê carekê li Bexdayê derdikeve. Zarê wê soranî ye. Kovara Kurdî a mezintir û teküztir e.

Hawar: Kovareke edebî ye. Ji sala 1933-an ve li Şamê û bi zarê kurdmancî tête belav kirin.

Ronahî: Ev du sal in, li Şamê dest bi derketinê kiriye. Zarê wê kurdmancî ye. Ronahî kovareke misewer e û li serê mehê carekê derdikeve.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## QIWETÊN KIŞWERÊ



SIWARÊN KIŞWERÊ FRENSIZÎ YÊN KO BI NAVÊ SIPAHÎ DENG DANE



STOLA BRÎTANÎ BI TEVKARIYA STOLÊN HEVALBENDA HIKMÎ DERYAYÊN CIHANÊ DIKIN.



ŞERÊ MEZIN YÊ 1914— 1918 AN

de Gava tanga pêşîn hatiye cêkirin û esker ketine hindurê wê, nikarî bûn tê de bisekinin, motorê ew dikir perçeke agir. Lê mihendiz û hoste dev jê bernedane, ne gatine bi kêr naye, xebitîne û îro tang gihaye dereca xwe ya çakiyê a îro. Dinya welê ye; pir tist hene zehmet in û gava mirovên sist li wan tişta dinêrin, dibêjin naçe serî; kalikên me gotine: Xebat şêr e, dest avêtê dibe rovî.

Sal 1 — Hejmar 9

Duşemb 28 Hizêran 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Surî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

ZANÎN Û PÊŞKETIN

## DEWRAN

BOBLATÊN ME ÊN CIVAKÎ

### Milet Çiqas

Bindest dibin, boblatên wan ên civakî jî ewçend pirtir dibin. An boblatên gelekî ên civakî çiqas pirtir bibin, wî gelî ewçend bindest diêxin. Ji wan her du belayên han kîjan bi ser miletekî da were, a din wekî tava baranê li pê ewran bê atlahî bi ser da digire.

Dema min xwest di bin vê ser nama han da benda xwe binivîsim û min qelem girte dest xwe, sereki direj ez şaş û mat mam. Ji ber ko boblatên me ên civakî pir in û yek ji a din mezintir û dijwartir e. Di vî warî da, heke em wekî gelên mayî biramin, divê bi baran kitêb bêne nivîsîn. Lê heke em weke xwe biramin, dibe ko em karibin ji boblatên xwe ên mezintir hinekan bidine ber çavên xwendevanan. Dîsa divê em ji bîr nekin ko di vî warê han da, pistî ko gelên mayî xwe gihandine bilindcihên riya jînê, em gelê kurd ji gemiya Nûh çar bostan bi dûr neketine.

### Ji Bextê Xwe

Ê reş; em kurd wekî tovê ko dema reşandinê di bin keviran da dimîne û ji çilkên baran û tîrêjên royê qet destkewtî nabe, her û her tov dimîne, berî hezar salan em çi bûne îro jî hîn ew in. Ev boblatên han, di warê jînê da ko ji bo gelê kurd kêmasîne mezin in, bi çi awayî dibe ew zane, divê di riya rakirina wan da em xwe qenc biwestînin. Heya ev boblatên han di jîna me a civakî da hebin, xwe ji vê bindestiya malkambax xilas kirin ji me ra tu caran lênayê. Ji bo vê yekê û di vê rê da divê em çavên ywe jî tu zilan ne parêzin. Divê xatirê hinan û xeyda hinekan me ji gotina rastiyê bi şûnda ne de.

Gava Xwedê xwestiye hîmê civata beşerî deyîne, ew jî wekî çendekê wan li ser du lebatan siwar kiriye. Li nik hemî miletan ko ji van her du hîmên han yek jin û yê din mêr in; li nik me kurdan, hîm yek e û ew jî mêr bi tenê ne. Ji ber vê yekê jîna me a civakî ne wek miletên mayî li ser du hîman, bi tenê li ser hîmekî hatiye daçikandin, wekî peyayê bi lingekî. Di warê jînê da bihayê mirovê bi lingekî çiye, di jîna civakî da bihayê me kurdan jî ew e.

Tête gotin ko me kurdan jî jin hene û jinên me ji ên gelên mayî girstir, xurtir û çelengtir in. Çawan dibe ko jîna me a civakî li ser hîmekî be ? ! ...

### Divê Em

Ji bîr nekin ko me kurdan, hîn jinên xwe ne dane wî cihî ko di warê jîna me a civakî da bibin hîmekî !... Jineke ne xwenda û nezan çawan dikare bibe hîmekî ji hîmên civata beşeriya îro ? ... Piştî ko pêxember ji hezar û sê sed û şêşt salî vir da xwendina jina jî wekî a mêran ferz rave kiriye, kîjan bavê camêr rahiştiye destê keça xwe û biriye dibistanê. Bê şik sûçê nezanîna kurdan a vê hedîsê, vedigere ser şêx û melayên me ko bi kesî ra nabêjin. Gava yek vê hedîsa han ji derva dibihîse û ji wan dipirse, dibêjin: ew zanîna ko pêxember di hedîsê da qesd kiriye, hîn bûna quranê û rêzanên nimêjê ne. Ji ber ko ew bi xwe jî ji wan tiştan pêva tu tiştî din nizanin. Gava zanayên me ev camêr bin; hêviya bi ber me xistina riya rast nema ji wan dibe.

Ji milê din, dîsa divê em bê fihêt li xwe nin ko di nav me kurdan da jin, hîn ji bihayê ker û hespê an ga û çêlekê derbas ne bûye. Ev dewarên han çawan di sûk û bazaran da tên firotin; jinên me kurdan jî welê di nav dîwan û odeyên bavên xwe da têne frotin. Bi tenê ferqa di nav bera keç û dewaran da ev e: dewara frotî bihayê wê tê standin û keça frotî qelenê wê tê standin. Heke em ji bavê kîjan keçê ra bêjin: ma gelo tu keça xwe difiroşî ?.. Ko jê bê, bê şik wê neqenciyeke mezin bi me bike. Lê dema em bêjinê: filan kes, tu keça xwe bê qelen nadî ?... Hinga bersiva ko bide me ev e: ma min ew li erdê dîtiye ko bê qelen bidim !... Her wekî qelen ne firotin lê tiştekî din e:

Di dinê da şermek ji vê mezintir nabe ko bavek di nava birek mêr da rûne û qelenê keça xwe bazar bike... Gava ev yeka han ne firotin bê; êdî nizam bi çi ra firotin tê gotin. Erê, ev rastiyeke welê ye ko qet nayê veşartin; em kurd keçên xwe difiroşin û frotineke bê rûmet û kirêt... Bi vî awayê han me jinên xwe ji jîna xwe a civakî bê par hiştine û avahiya wê jînê li ser hîmekî tenê lêkiriye. Ji lewre ye ko heya îro em pêşva ne çûne û bi vî awayî pêşvaçûna me jî ne mikûn e.

Xwedê hez bike ez dê di vî warî da hîn çend bendên din jî binivîsim.

OSMAN SEBRÎ

# AGIR & BOMBE DIBARIN

## Pênc Bajarên Elemanî Hatine Bombardiman Kirin

Londre — Ev bîst û çar saet in, refên brîtanî, bê etlahî, li karxane û febrîqeyên elemana û li bajarên ko ew febrîqe di dora wan de kom bûne dixin. Piştî ko refên brîtanî, zora xwe da bûn Frîdrîxshafen, Krefeld û Hulsê, wan nihû Mûlheim bombardiman kirine. Kelehên firok jî duhî bi awakî gelek xurt Roterdam û Anvers dane ber bomban. Ejensa Elemanî ji aliyê xwe dide zanîn ko bombeavêjên brîtanî li Oberhewzenê jî xistine û xesarine mezin gihandine hêjagehan.

Londre — R: Şevêdî 700 bombeavêjên brîtanî bi ser axa Germanistanê de girtine û bajarê Krefeldê dane ber derbên xwe.

Londre — R: Wezareta brîtanî a hewayî dide zanîn: Refên me ên xurt ji bombeavêjan bihevketî, şevêdî bajarê elemanî Krefeld bi awakî gelek xurt û bi tesîreke baş bombardiman kiriye. 44 bombeavêjên me venegeriyane qerargehên xwe. Krefeld şaristaneke mezin e, rûniştimanên di wê 170.000 in; di vê şaristanê de karxaneyên pola û yên kîmyayê ên mezin hene.

Cezayir — Emîral Mişelye, fermandarê qiwetên frensizî ên behrî di Etlentîkê de ji karê xwe hatiye rakirin û fermandarê Dekarê beremiral Koline ketiye şûna wî.

Londre — Mr. Averel Hariman, nimînendeyê serekcimhûr Rûzwelt ê xas li Brîtanyayê ji bona karên ko bi qanûna qerd û kirêbike girêdayî ne; piştî ko şeş heftan li Emerîkayê maye, jê vegeriyaye û hatiye Londrê.

# QELANDIN & EDIMANDIN

## Ordiya Sor Xwe Kar Kiriye û Pêk Aniye

Moskû — Radyoa Moskovayê duhî êvarê çend pirsên benda rojnama rûsî Izvestiya belav dikir, têde hatiye gotin; Şerine xurt û zor ber bi destpêkirinê ne; qerara Ordiya sor eve; şkênandin, perîşan kirin û qelandina leşkerên dijmina bi tevayî û bi awakî birinî. Miletê sovyetî dikare bibêje ko wî eleman xistiye devê kortalekê. Dersên şerên ko çêbûne hatine mitale kirin û li gora wan tecriban Ordiya sor ji bona şerên ko di pêşiyê de ne, xwe kar kiriye û pêk aniye.

Cezayir — Di Efrîka bakurî de nihû 120 generalên frensiz hene; emrê du hebên wan ji şêst salî bêtir e û ên mayîn 56, 54 û 52 salî ne.

Çung-King— Refên emerîkanî yên ko di Yang-Tseyê de arîkariya eskerên çînî dikirin, xesar gihandine cengkeştiyeke japonî,

Londre — Şevêdî di Londrê de işareta talukê hatiye dayîn, lê tu tişt ne qewimiye.

Berlîn — Radyoa Bêrlînê elam dide; di m'adenên Bêringê de —axa Belçîke — helaketek çêbûye, 50 xebatker hatine kuştin û 15 heb jî hatine brîndar kirin.

Melburn — Japona kirine dirêjî çeperên eskerên hevalbenda yên Muboyê—erdê Nû-Gineyê—bikin, êrîşa japonî hatiye şkênandin û xezar gihaye wan.

Londre — Mr. Çorçîl bi hafa kralîca Elîzabet ketiye û pê re taştê xwariye.

Qahire — Wezîrê brîtanî ê şerî Sir Cêmis Grîg, hatiye Qahirê ew çavê xwe li leskerên ko di Misrê de ne, wê bigerîne.

MEZINÊN DINYAYÊ



SEREKCIMHÛR Mr. RUZWELT

### BO XOŞEWÎŞTÎ ME

*Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN*

Le bo gewre û xoşewîst man
Norî çaw û sebrî dil man
Kamiranî Bedir-Xanî
Her bijî şêrî jiyan-man
Be omîdî qebûl-kirdin
Reşbelekî dilî reş-man
Binêre bom Roja-Nû zû
Diyar e, nav û nîşan-man
Be roj digrîn û denalênin
Be şew xew heram e lê man
Çaw le Hawar degerînin
Nizanin boç nayê bo man
Gelawejîş gulweşîn e
Gulêke le baxî xoman
Ronahî dûnyay ronak kird
Şewqî da deşt û çiya-man
Roja-Nû derket le latan
Roja kon derçû le laman
Hewrî reş û tal bilaw bû
Be derkewt norî îman-man
Roja-Nû hat bira kake
Dekatin şekway ehwal-man.

KAKE EMÎN HIWÊZÎ



Eskerên Hevalbenda wilo pê li Erdê Efrîqa Bakurî dikirin

### Hezar Waporên Barkêş

Waşington — Destgehên emerîkanî hero 5 ango her meh 150 wapora çêdikin; di nav donz de mehên dawîn de, yên ko li 31-ê gulanê qediyaye destgehên emerîkanî 1000 wapor çêkirine û 100 waporên banzînê jî, ji tîpên mezintir

# DEMA NIHA

## VEGERA KRAL CORC VI

### Kralê Ingilistanê Ji Efrîqayê Veğeriyaye Londrê

Londre — R: Kralê Ingilistanê, xwedî tac û kişwer Corc VI ji Erdê Efrîqa Bakurî û Maltayê vegeriyaye û hatiye Londrê. Serekwezîr Mr. Çorçil di balafirgeha payetextê de, li hêviya wî bû. Îro serê sibehê wezîrên brîtanî bi tevayî çûne Seraya Bukinghamê; xwatirxwaziya kralê xwe.

Vîşî — A.F.I. Mihendizekî frensiz isûleke nû peyda kiriye û ji qalûşên kertol û fesûliyan kaxez çêkiriye.

Nû-York — R: 125.000 xebatkerên madena berên komirî, yên ke îşê xwe berda bûn, hêj dest bi xebatê ne kirine.

Berlîn — R: Eleman di sînemeyan de bi filmekê, xesarên ke bombardimanên Hevalbenda gihandine şaristanên elemanî pê xelkê xwe dikin.

## GENERAL DE GOL

### Hatiye Xatirxwaziya Erd û Bajarê Tûnîsê

Cezayir — R: Radyoa Cezayirê dide zanîn: duhî General De Gol hatiye Tûnîsê û çûye xatirxwaziya Begê Tûnîsê û ya pêdarê ve erdê General Mast.

Lizbon R:— M. Puo, Pêdarê Fasê ê giyanî, ji Hikûmeta Portixalê re da zanîn ko tu wapora barkêş nikare bê destûra hikûmetê di behrên pêravên Efrîqa Bakûrî de geşt û guzar bike; û waporên ko bi ya vî emrî ne kirine, dê bêne xeriqandin,

Weşington — A.F.I. Xanima Mareşal Çang-Key-Çek, serdarê Çînî, der wan rojan, dê bê payetextê Emerîkayê û di Qesra Spî de, wê bibe meyvana Xanima Serekcimhûr Rûzwelt.

Rio De Janeiro — A.F.I. Balafireke brêzîlî di Behra Rioyê a dûr de noqaveke elemanî bin av kiriye.

## Strana Kurdî

### DE GIDYANO!

De Gidyano! De Gidyano
Bîra gundê me xetimî
Keçikê digot: sing û berê min
Mîna qeymaxê miya,
Nivîşkê serê sibehê,
Min ji delalê xwe re danî
Ser nankî genimî.....
Min sund xwariye bi Quranê
Ez tu car narim
Wî hundirî, wî kavilî
Wî mîratî, wî sitimî.....
Min dî ji nîvê şevê pê ve
Delalê dilê min
Di nav cihê min de diqedimî. Migo:
Bila Xwedê ji melayê gundê me
Nexweş be.
Çava mehra min birî
Li wî kotîkî, li wî çepelî
Li wî ma'dzerhemî.
o o o
De Gidyano! De Gidyano!
Bîra gundê me bê qam e
Jêr de kanî-ye, jor de cam e
Ez û delalê dilê xwe
Bist û çar saeta tê de mane;
Min nizanî bû
Ko dilketina min û bejna zirav
Sala vê salê bi milam e.
o o o
De Gidyano! De Gidyano!
Delalê dilê min dike
Di xopanê gundê me de
Avanîkê çêke
Ezê bigînim Midyata xopan
Dû Şam û Şekiro
Bila bên, cikî ji min û bejna zirav
Li tebeqa jorî çêke
Kul û kederê bejna zirav
Di ser dilê min de şax berdane
Bûne kotik û merez
Û xem û xiyal û girêk e,
Şixula min û bejna zirav
Li erdana xira bûye;
Belkî Rebê alemê
Li ezmana ji ba xwe çêke.
o o o
De Gidyano! De Gidyano!
Roka me li nav beyna
Nîro û esir dageriya
Xwezila ji xeyra Xwedê ra
Ezê ji kevoka bibûma
Kevokê xubariya
Şevkê minê ji nîvê şevê pê ve
Xwe berda hebsa Mêrdînê
Nav girtiya û nav hebsiya
Digo: delalê dilê te rakirin
Dane ber qundaxê eyneliya.
o o o
De Gidyano! De Gidyano!
Bi ser min û delalê min de
Hat payîzê wextê tirî,
Min dî şevkê ji nîvê şevê û pê ve
Dê û bavê min
Li hewşa me sêkinîn, pev şêwirîn
Keçikê gazî dikirê digo:
Lo, lo lawiko
Mala bavê te şewitiyo!.....
Rojkê were bi qewil
Û resûlê Xwedê
Min ji mala bavê min bixwazê.....
Sed wa'de, li canê min keti be
Ko ez ne dam te
Ezê rabim bi dawa taqî bigirim
Li bav û bira herim gilî
Qatî ne bû
Miradê min û bejna zirav;
Ezê serê sibehê rabim
Destê xwe di kêlekê xwe yî
Vala xînim.....
Ezê li ser rêka welatê xerîb û
xurbetê
Bi dû bejna zirav de dikewkirim
Qatî ne bû
Miradê min û bejna zirav
Ezê herim di mala xelkê delal de
Rûnim ne mehirkirî.
o o o
De Gîdyano! De Gidyano!
Navbeyna min û bejna zirav
bi dîwar e
Alî kils e, yek nikar e
Cotê memkê min xanim xatûnê
Yek sêv û yek pirtiqal e.....
Keçikê gazî dikir digo:
Lo..... lo! Lawiko
Şevkê ji nîvbenda şeva û pê ve
Were tewafa singê berê min keçikê
Ji te re xweştir e
Ji teberika mala Şêxê Kal e.
Ji girêdana piştê ber jor de
Tu çi dixwazî ez minêkar im
Ji girêdana piştê û ber jêr da
Ez mirîda mala Şêxê Kal im
Çi bixwazî ez ni karim.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## CIHAN & EMERIKA

Îsal karxaneyên emerîkanî 99,000 balafira çêdikin.

Meha borî wan 7,200 balafir çêkirine.



KELEHEKE FIROK - BOMBEAVÊJEKE EMERÎKANÎ



Emerika bê etlahî bi her texlît çek û posatên şerî arîkariya Ewistralyayê dike.

JIN Û KEÇ JI TÊNGAZÎYA EWISTRALYAYÊ

2,500 Eskerên emerîkanî, ji xwîna japona di giravên Hewayiyê de hîn î şerkirinê di bin.



ESKERÊN EMERÎKANÎ JI XWÎNA JAPONÎ



Desîgahên Emerikanî bi şev û bi ro bi çêkirina cengkeştiyan mijûl in.

Zirehpûşeke emerîkanî bi şeş topên xwe bi hev re gemiyên dijmina dide ber derbên xwe.

ZIREHPÛŞEKE EMERÎKANÎ, 41,000 TON MEZIN.

1ère ANNÉE — LUNDI 28 JUIN 1943. — NUMÉRO 9

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur-Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

L'évacuation spontanée de Castel Rosso, petite île qui était occupée par les Italiens à quelques kilomètres de la côte méridionale de la Turquie, est une des premières manifestations de la stratégie offensive des Alliés en Méditerranée orientale. Impossible à défendre, cette île n'offrait sans doute pas un grand intérêt militaire. Notons en passant, que son évacuation (à moins qu'elle ne soit une feinte) peut signifier que le Proche-Orient n'est plus un objectif immédiat de l'ennemi. Cette évacuation confirme, s'il en était besoin, ce que l'on savait déjà des craintes qu'ont ces Messieurs de l'Etat-Major d'en face d'une attaque alliée sur les positions qu'ils contrôlent en Mer Egée. Et le bombardement du plus important aérodrome utilisé en Grèce par les Allemands, au Sud de Salonique, vient surabondamment justifier ces craintes.

Mais cela n'est rien auprès de la grande peur qui paralyse maintenant l'Italie. Objet d'une offensive aérienne qui dépasse l'imagination d'un Hitler et a fortiori celle d'un Mussolini, elle voudrait crier grâce. Non seulement ses ports, ses aérodromes, ses moyens de communication, ses industries de guerre connaissent la destruction systématique, et sa population est épouvantée par l'effet des bombes quotidiennes d'une, deux et même quatre tonnes, mais encore le peuple italien et ce qui reste de ses dirigeants fascistes (qui il y a trois ans, voyaient s'ouvrir la perspective d'une guerre facile) attendent aujourd'hui l'invasion avec la certitude mortelle que la résistance ne sera pas longtemps possible.

Portant le comble à leur affolement, l'Allemagne laisse ouvertement paraître son mépris à l'égard de ces Alliés mineurs qui n'ont jamais pu lui apporter d'aide efficace dans les moments décisifs: l'Albanie, dernier fragment de l'Impero Italien, est maintenant et entièrement sous le contrôle nazi. Von Bock chargé de défendre la péninsule italienne, avec l'appoint de nombreuses divisions allemandes, naturellement, a exigé que le commandement tolal lui fut donné; dans un dernier sursaut d'orgueil, l'Etat Major Italien aurait refusé.

Il paraît cependant invraisemblable qu'Hitler confie aux seuls Italiens le soin de défendre leur pays. Ce serait ouvrir trop facilement la porte du Continent européen; les coups terrifiants portés à à la Spezzia, à Naples, à la Sicile, à la Sardaigne, à la marine (13 bateaux coulés et 7 endommagés en l'espace d'une semaine) sont en train de miner définitivement le désir, qui n'est pas volonté, de faire leur ce nouveau slogan nazi plein de signification: «tenir bon.»

D.

## PAROLES EN L'AIR

«Si Gœbbels n'existait pas, il faudrait l'inventer», serait-on tenté de dire devant les efforts désespérés du petit Docteur, appelé à intervenir chaque fois que cela va mal. Il accourt, il déverse l'huile de son éloquence sur les flots déchaînés, et les flots se calment — pour un temps, du moins.

Hitler en personne s'écrie orgueilleusement, le 15 Septembre 1942: «Stalingrad tombera, vous pouvez en être certains». Mais c'est Gœbbels qui doit annoncer, au Sportpalast, que la 6ème armée de von Paulus est anéantie. Le Fuhrer, lui ne peut s'absenter du théâtre des opérations, où il tente d'enrayer la déroute de ses troupes.

C'est Hitler, Commandant en Chef des Forces Armées du Reich, qui donne l'ordre de bombarder successivement Varsovie, Rotterdam et Coventry. Mais c'est Gœbbels que l'on envoit à Wupperthal, pour porter les condoléances du Gouvernement aux populations durement éprouvées de l'Allemagne Occidentale. Et cette fois-ci, Hitler n'a même pas l'excuse d'opérations d'envergure qui le retiendraient sur le front oriental. Le communiqué allemand annonce des combats d'importance locale. Mais le Fuehrer n'ose paraître en personne devant les familles éplorées: il se contente de demander par téléphone des nouvelles sur l'état des villes bombardées.

Hoffmann, Gauleiter de la Ruhr, déclare en effet: «Le Fuehrer ne cesse de penser à vous. Après chaque raid, il téléphone pour avoir des nouvelles. Cela prouve qu'il pense à vous, à chacun de vous». Retournant le vieux proverbe «Loin des yeux, loin du cœur», Hitler semble trouver dans la distance qui le sépare des manifestations de son peuple, une inspiration de tendre sollicitude. Et c'est Gœbbels qui se rend sur place, pour parler au nom du Fuehrer.

Ce pauvre Gœbbels semble fatigué. Lui-même le laisse d'ailleurs entendre, car il s'écrie, dans son dernier article dans la revue hebdomadaire intitulée «REICH»: «Quel est le pays belligérant dans lequel le Ministre de la Propagande rendrait compte à son peuple, semaine après semaine?» Plaignons l'Excellence qui ajoute à toutes ses charges celle de l'article hebdomadaire du «REICH». Mais répétons, une fois de plus: «Si Gœbbels n'existait pas, il faudrait l'inventer.» Car que l'on explique cela par son état d'épuisement ou par un découragement subit, le petit Docteur laisse échapper des lambeaux de vérité qui nous permettent de reconstituer petit à petit, l'image du Reich à l'heure actuelle.

Bien sûr, Gœbbels promet aux ouvriers des régions bombardées, de formidables représaille de la Luftwaffe. Mais n'a-t-il pas promis aux Allemands une formidable offensive en Russie, pour les consoler de la débâcle de Stalingrad? Quatre mois ont passé, et l'offensive est toujours à l'état de projet. Craignant que ses promesses ne fassent long feu, Gœbbels se lance donc dans une longue apologie du silence: «Le silence est d'or» s'écrie sans rire ce bavard qui accouche d'un article par semaine. «Nous avons des projets formidables, mais chut; pas un mot, les oreilles ennemies nous écoutent.» Croit-il vraiment rassurer par ce moyen puéril ceux qui reçoivent toutes les nuits la visite des bombardiers alliés?

Il le croit si peu qu'il poursuit «Il y a trop de gens chez nous qui reprochent au gouvernement du Reich de s'être trompé dans ses prévisions. Un gouvernement n'est pas plus infaillible que n'importe quel être humain. La preuve, c'est que le gouvernement britannique a commis d'innombrables erreurs. Mais nos super-objectivistes pardonnent tout aux gouvernements étrangers, et ne sont sévères que pour le leur.»

Allons, Docteur, une cure de repos s'impose. Comment: vous avouez qu'après dix années d'éducation nationalsocialiste (que vous avez vous-même dirigée au moyen de votre Ministère) et après trois ans et demi de «guerre purificatrice», de trop nombreux Allemands préfère le gouvernement démocratique de Grande-Bretagne au vôtre?

Décidément, Docteur, le silence est d'or.

LUCIE VIDAL

## POÈME KURDE

### PARLE-MOI

Parle-moi comme parle le mystère
Dans l'immense jardin du monde,
Comme la brume sur les bruyères,
La mer par ses ondes,
La forêt dans le vent,
Dans son rêve le savant,
Dans le rire la fête,
Par son amour le poète,
La cascade sur les rochers,
Par ses rides le débauché,
Comme la fleur par son parfum,
Par sa mémoire le défunt,
Les nuages dans le ciel,
L'abeille par son miel.
Parle-moi
Toi
Qui connaît l'art de parler
Dans le vide de ton absence.
La cadence
De ta voix charmeuse a rempli
Mon âme
Ni cri, ni blâme
Les semaines passent et les années.
Tu es muette
Comme un temple suranné.

DR. BEDIR KHAN

## Les Dépêches de la Nuit

### Front de Méditerranée

Les «Forteresses Volantes» américaines étaient à peine rentrées à leur base après leur raid sur Messine et les incendies brûlaient encore que des formations de bombardiers de la R.A.F. venaient parachever leur œuvre. — Guidés dans la nuit par la lueur des incendies, les bombardiers britanniques ont déversé des tonnes d'explosifs sur la gare maritime et les installations du ferry, sur la gare centrale et sur les dépôts de carburant. Tous les appareils de la R.A.F. sont rentrés indemnes à leur base.

### Front aérien d'Europe

Des «Beaufighters» du Commandement côtier ont attaqué un convoi allemand au large des côtes de Hollande. 3 navires d'escorte et l'un des cargos ont été atteints par des bombes. 2 avions ennemis ont été abattus au cours de cette opération. 3 autres appareils allemands ont été descendus au-dessus de la France et 1 au large des côtes sud-est de l'Angleterre. Un seul avion britannique est porté manquant.

## CONTE KURDE

Le roi Salomon régnait sur les génies, les hommes et les bêtes. Un jour, il ressembla les oiseaux, et leur demanda:

— Oiseaux, quel est le plus vieux d'entre vous?

— C'est, répondirent les oiseaux, le vautour.

— Approche vautour, dit le roi Salomon. Depuis combien d'années es-tu au monde?

— Sire, depuis mille ans.

— Et qu'as tu vu de remarquable, ici-bas?

— O Roi, j'ai vu un de mes pareils qui a trois mille ans.

— Va le chercher, ordonna Salomon.

Le vautour s'envola. Une heure plus tard, il revenait, suivi d'un viel oiseau les ailes déplumées, le cou ridé, le bec émoussé, les serres usées, le chef branlant. Tous deux saluèrent et prirent place. Le Prince s'enquit:

— Est-il vrai que tu aies trois milles ans?

— C'est exact, Sire.

— Dis-moi qu'as-tu vu ici-bas, au cours de ta vie?

L'animal hocha la tête et répondit:

— O Roi, j'ai connu des moments agréables, j'en ai connu de pénibles, mais je n'ai jamais eu qu'une aventure qui merite d'être contée. Un jour,—j'étais jeune, alors, j'étais vigoureux—, je pris mon vol, et je montai dans le ciel très haut, jusqu'à toucher le soleil, dont les rayons me brûlaient, si haut que la terre m'apparaissait minuscule et lisse comme un oeuf. Alors, je redescendis. Le monde grossissait peu à peu; les mers, les montagnes redevinrent distinctes, et j'aperçus un immense océan, au milieu duquel il y avait quelque chose de blanc. Je piquai sur cette tache. C'était un îlot, qui portait un palais somptueux et brillant.. Je me posai sur un roc, en face du porche du batiment. Un homme sortit; et sa taille était, Sire, égale à celle de trois hommes d'aujourd'hui. Il me souhaita la bienvenue, rentra, et revint bientôt, portant sur ses épaules un chameau fraichement égorgé, qu'il posa devant moi, je me rassasiai, et, m'étant reposé je pris congé et regagnai mon pays.

Cinq cents ans plus tard, j'eus l'idée de retourner à l'île. Le palais avait perdu sa splendeur, l'homme qui en sortit était moins grand, moins bien vêtu. Il ne me donna qu'un mulet à manger.

Cinq cents ans s'écoulèrent encore, et je voulus revoir l'île. Le palais était délabré, son maître était à peine plus grand qu'un homme d'aujourd'hui. Il ne me salua pas, et me jeta en pâture une chèvre crevée. Je partis, sans avoir calmé ma faim.

Sire, je ne veux pas vous importuner par un trop long récit. Au bout de cinq cents nouvelles années, j'entrepris de franchir l'océan. Fatigué par le voyage, je m'arrêtai sur l'île, pour prendre haleine. Majesté, le beau palais de jadis n'était plus qu'une ruine. J'aperçus, caché derrière un pan de mur, un homme sale, déguénillé, tout pareil à ceux d'aujourd'hui. Il avait un arc à la main; j'évitai de justesse le trait qu'il me décocha, m'enfuyant à tire d'ailles.

Et voilà. Sire ce que j'ai vu ici-bas».

Le roi Salomon, s'étant grandement émerveillé de ce récit, remercia le vautour et le fit richement récompenser.

R. LESCOT

# DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

*Nivîsevan Grigori Petrof* — 6 — *Wergerandok : Qedrî Can*

Piştî ser-destiya Ûris; gelek ji xelkê Isweçê — li Finlandayî — mayîna xwe, xwestin. Lê ne mîna berê bi hakîmanî û efendîtî... Vîxelkî jî ji bona pêşveçûn û bilindbûna welatê xwe ê nuh, ji dil, dest bi xebatê kirin. Berê, yên di vê rê de dixebitîn, hindik bûn... Wê gavê Xwenda, Mamosta û Rahibên Finlanda, ewqas hindik bûn ku bi tiliyan dihatin jimartin. Lê vî halî, quweta munewerana a manewî ne dişkand... bêtir û zêdetir dikir.

## SENELMAN

Hêj di saxiya Çar Aleksandirê Yekemîn de, merivek bi navê (Senelman) serekê civata çand «Kultur» a Finlanda bû. Ji ber vê yekê, em hebekî behsa dîroka jiyîn û xebata wî bikin:

(Yohan Vîlhelm Senelman), di 12ê gulanê, sala (1806) de, li Stokholm, hatiye dinê... û di çarê Temûza sala (1881) de li «Dancarbî» mirîye.

Ev Camêr. alimekî mezin, feylesofekî kûr, siyasîkî dengîn bû... Lê hêj bêtir, di pêşvebirina çanda qewmî û mamostetîya ku ji yelkê re kiriye, bi nav û deng e.

Senelman u hevalên wî, bere bere, bi xebatên xwe, welatê xweyî bi hezar û yek çiravî kirin WELATÊ ZEMBEQÊN SPÎ... Ev lawê Finlandî, hetanî sax bû, xwestiye vê rastiya hanê, bêxe serê welatiyên xwe: Finlanda: her gav di bin tehlûka îstila Ûris û Isweçan de ye... Ji bona li berxwedayin (muqawimet) a van dijminên mezin û xurt divê em bi çand «hirs» a xwe ji wan bilindtir bin...

Senelman, rojnameyek bi navê «Sayma» derdixist. Di wê rojnamê de, tim ji welaliyên xwe re ev gotin dikir: «Kînga miletê me yî biçûk, ji miletên cîranê xwe yên mezin bi medeniyet pêşdetir bibe, hingî tehlûke na mîne,..

Fînan, bi salan ve, ji bona pêşveçûn û bilindbûna çanda miletê xwe xebitîne... û îro, ji gelek mîletên Ewrûpî bêtir xwediyê medenîyetê bû ne. Edî, li kêleka cîranê xwe yên biçûk û mezin xwediyê, huquq, serbestî û serxwebûnê bûne û tu tirsa wan ji tiştekî ne maye.

Senelman, di nav minewerên Finlanda yên nuh de tîmsalek e: vî Camêrî çend mamosta, papas, û ebûqatan, ji bona belavkirina mearife, mîna xaçparêzan (ehlê selîb) seferber îlan kiribûn. Wî û hewalên wî ditgot in:

«Minewerî, ne ku kinc û serpoşên modayê li xwe kirine... Koma mineweran, mîna heşê milet e. Milet, hûn ne dane xwendin ku hûn piştî xwendineke qenc, herin li çayxane û meyxaneyan rûnin, li ser masan isqambîl û domîno bilîzin... Yên wisan dikin minewerê zingarî ne... Yên xwenda, deyndarê înkîşafa heşê milî, deyndarê hişyarkirina wîcdanê welatî, deyndarê xurtkirina vîn (îrade) a qewmî ne...

# DÛRIK

## DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

### KOTIKO

Mala te bi kotiko
Çîm xwehro, çîm qeysiko
Lawê Hora dihniko
Hema xwe pizik diko
Teres siwarê dehşiko
Nav beyna Mercê û Metîna
Ji xwe re kiriye qevziko

Kotik derket ser bana
Ban kir melekê ezmana
Rûhê kotik bistînin
Bavên axê cebana

Mala te bi kotiko
Çîm xwehr û çîm qeysiko
Tu wek jina b' du giyana
Li gasîna tif diko

Ne kurk û ne çêçiko
Ne mih û ne berxiko
Ne bizin û ne kehriko
Ne çêlek û goliko
Lawê Hora dihniko
Hema xwe repik diko

### XIDIR

Hey Xidir, Xidir, Xidir
Li ser minara ban dikir
Her ji du riwa tim li vir.

Xidir hiloş biloş
Teres lawê kerfiroş
Xidir tê û dilezîne
Ba li bêrîkê dixîne
Ji Xelkê weyê micîdî ne
Hemî rişk û sipî ne

Xidir çû ye Mêrdînê
Xwe ji eşq û dila dihejînê
Xidir çû sûka kera
Nan kirî bû b'deh pera
Li Mêrdînê, kir xela
Çavê teres li teşxela

Hey gidî, gidî lo Xidir
Her ji du riwa tim li vir.

### ÊMO

Hey Êmo, Êmo, Êmo
Tu here w' ez bibêmo
Êmo li binya tehtika
Ramûsana keçika
Xweş ji mastê elbika.

Memkê xwe li devê mi ke
Xwedê te bi riziqê mi ke
Êmo keçika keşe ye
Paşil tijê xurme ye.

Êmo li binya xaniya
Memkê Êmo mi diya
Xweş e ji goştê kêviya
Hey Êmo, Êmo, Êmo.

Êmit, Êmo, Êmoşê
Dev tu ne, rûn difiroşê
Mêr tu ne kur li koşê
Koçera deşta Mûşê.

Êmo d'haţ û d'gulgulî
Eynik danî, û xemilî
L' bejnê paçikê gulî
Xeftan l' bejnê edilî
B' şêx û mela t'ya min î
Mehbûba l'ber vî dilî.

Êmo, Êmo, Êmûşê
Êmo dî li banê banî
Tu b'xizêmek ridwanî
A ko mi digo te anî
Sed bimbarek li wî canî

### Ramûsan

Mi dî bû, te dî bû
Nav pembûa
W'ez ramîsim
Her du rûa

Mi dî bû, te dî bû
Nav tûtinê
Piling deyne
Ser qelyûnê
Te ramîsim
Te xatûnê

Mi dî bû te dî bû
Nav geneka
W'ez ramîsim
Bi heneka,

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## Çîredestiyên Zanîn û Himetê


BALAFIRÊN MEZIN YÊN BAR Û ESKERKÊŞ

Di wan balafiran de du sed esker bi çek û posatên xwe ve bi cih oibin. Ev mekîneyên he, ji balafiran bêtir nîzingî trên û waporan e.


WAPOREKE BALAFIRHILGIR JI TÎPÊ MEZIN

Keleheke mezin ya ko warê 80 û heta 100 balafirên şerî ye. Îro stoleke mezin bê tevkariya balafirhilgira dirêjî erd û stolên neyara na ke.


ZIREHPÛŞ, ŞÊRÊ BEHRÊ, KELEHÊN MELEVAN

Zirehpûş, wapora şerî a mezintir e; ew 35 û heta 41 hezar ton giran in, gulleyên topên wan ên mezin li armcên ko 20,000 mêtir dûr in dikevin. Mîrîtiya Behrên Cihanê di destê wan de ye.

## GUL, BIHIN, JINÊN SPEHÎ


DELALÊN DILÊ XELKÊ

IMP. LE MIROIR D'ORIENT · BEYROUTH

Sal 1 — Hejmar 10

Duşemb 5 Tîrmeh 1943

# ROJA NÛ

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

CIHANA NÛ

### Azahî û Serbestî

Cihana Nû Emerîka ye. Berî çend sed salan, zehf xelk ji zilm û zorkeriya Mezin û Hikûmetan aciz bûbûn û dixwestin ji xwe re erdekî peyda bikin ko têde dikarin aza û serbest bixebitin; û zalim û zorker têkilî wan ne bin. Ji çar aliyên dinyayê peyayên ko azahî û serbestî armanca wan bû, ketine riya mihaciriyê, hatine erdê Emerîkayê ê kêmxelk û vala û lê li hev civiyane, destê hev û du girtine û dest avêtine avakirina welatê xwe ê nû.

Lê azahî û serbestî ne ev gul e ko mirov bikare destê xwe dirêjî wê bike û wê biçine; û dîsa azahî û serbestî ne ev tişt e ko ji ber ko xelk jê hez dikin tê peşiya wan, û gava xelk jê re dibêjin bibe, ew çêdibe.

Azahî û serbestî mîna giya û gulçîçekên spehî ye, va ko hêdî hêdî digehe, bilind dibe û ji bona bi xwedî kirina azahî û serbestiyê mêrine qenc divêtin yên ko dixebitin, çavsor in, ji mesûliyet û berpirsiyariyê na tirsin û dizanin: bi tenê mirovên ko tu tişt na kin xeleta jî na kin, û yên ko dixebitin xeleta jî dikin, û ev ne tu xem e, û cehd û baweriya mirovên pak û xebatker, mîna ronahîyek e, ko pê riya milet rondar dibe, û milet armanca xwe dibîne. Armanca bilindtir û mezintir azahî û serbestî ye.

o o o

Xelkê Emerîkayê piştî ko dest bi xebatê kirine, hêdî hêdî û hêj bêtir m'ana azahî û serbestiyê seh kirine; û seh kirine bi çi awayî divê mirov ji berpirsiyariyê me tirse; û însan çawan dikare mîna mirovekî aza û serbest bijî.

Xelkê Emerîkayê hin bi hin qedrê azahî û serbestiyê hêj bêtir seh kirine û baweriya xwe pê anîne.

Dîrok û tarîxa Emerîkayê pêş me dike çawan, wan halê xwe edilandine, pêş ve ketine û ji bona azahî û serbestiya xwe şerî dijmina kirine û di riya serbestiya welatê xwe de hatine kuştin. Bi vê îman û baweriyê, bi baweriya azahî û serbestiyê di şerên xelasiya Emerîkayê de, wan şerî Ingilistanê û dîsa ji bona azahî û serbestiyê, hikûmetên bakurî û nîroyî şer û neyartiya hev û du kirine.

### Serbestî Çi Ye

Mana serbestiyê çiye? Ma ev çi tiştekî hêja ye ko xelkên Emerîkayê bi tevayî, ji bona serbestiyê gava hewce bû û hewce dibe mal û canê xwe dane û didin

Hîmên, asasên avahiya emerîkanî a mezin, û yên miletên emerîkanî ên xurt çi ne? Asasa pêşîn ev e: her insan, her peya xwedî qîmet e, xwedîheq e û xwedî qedr e. Her kes, jin û mêr divê qedrê jin û mêrên din bigirin, riayetî heqên hev û du bikin. Nabe ko hin peya rabin û bawer bikin ko ew ji xelkên din bêtir in, bi qedirtir in, dikarin li ser hisabê xwe xelkê bixebitînin û ko zikê wan xebat kera têr kirin, bawer bikin ko heqê wan hatiye dayîn. Yê ko dixebite divê hinde pere bikeve destê wî ko pê bikare di maleke paqij de rûne, cilên paqij li xwe bike, zaroyên xwe bişîne dibistanê û ji bona rojên tengî an nesaxiyê jî, çend peran bimîne destê wî de.

Her kes dikare li gora daxwaza xwe bigire û berde, bi işên ko dixwaze mijûl bibe, rabe û rûne, şert ev e ko ta'da heqên xelkê ne ke. Ev tiştên he heqê hemî insana ne, biçûk an mezin, belengaz an dewlemend, xwedîgund an cotkar, axa an peyayekî adetî, şivan an mîr, û di vê babetê de, di mesela heq û qedirgirtina heqên insanî de, der nav bira wan tu ferq nîne.

Wezîfeyên însana hemberî hev û du de, mîna hev in. Mirovek nabe ko destê xwe dirêjî kevne û heqên mirovekî din bike. Divê her kes barê wezîfeyên xwe hilgire, û di nav xelkê de, ji bona azahî û serbestiya hemşehriyên xwe, welatiyên xwe, wezîfên xwe pêk bîne.

Divê her kes bizane ko heke peyayek bê sebeb, bê heq û qanûn hatiye êşandin, siha vê zilmê ezmanê welêt tarî dike, û heke ev destê zalim ne hatiye jêkirin, sibe, ew radibe û tada mal, can, namûs û heqên mirovên din jî dike.

### Milet û Karên Milet

Xelkên welatekî, divê, îş û karên welatê xwe bi destê xwe bigerînin. Miletî divê ji bona gerandina işên welêt, ji xwe re serekek û civatek bibijêre û heqên vî sermiyanî û vê civatê çine, pêş wan bike, û heke rojekê ji wan ne razî ye, divê bikare wan rake û li şûna wan peyayên din bêxe.

Emerîka bi vî awayî têtê idare kirin, ji vê îsûlê re «Demokrasî» têtê gotin. Frense, Brîtanya-Mezin jî bi vê isûlê emel dikin. Sermiyan û serekên miletekî divê kar û şuxlên vî miletî li gora daxwaza milet bigerîne, û bala xwe bide heke xelkên welêt ji can, mal, azahî û serbestiya xwe ewle ne an ne, heke halê wan baş e an ne, heke halê wan çêtir dibe an ne, sihetên xelkê çawa ye, gelo xelk bi xwe hinî xwendin û nivîsandina zimanê xwe dibin an ne, heke zaroyên xwe dişînin medrese û dibistanan an ne, heke yê ko dixebitin heqê xwe bi timamî distînin an ne, heke xurt zorê didine qels û belengaza an ne. Serek û sermiyanên ko bala xwe na din wan tişta û ji bona bextiyarî û kamiraniya xelkê xwe na xebitin, ji cihê xwe ê bilind têne anîn xwar û carna jî têne êxistin zêndan û girtîgehan.

### Sonda Miletê Emerîkanî

Miletê Emerîkayê ketiye vî şerî û sond xwariye ko piştî ser firaziya Hevalbenda, hemî miletên dinyayê bibin aza û serbest, û ew li kîjan erdê, li kîjan hêla dinyayê de bibin jî, azahî û serbestî heqê wan e, û ev qencî û rehmet bê şik û şibhe wê bigehe wan,

# TELEGRAFA GENERAL DE GOL

## SERSALA ISTIQLALA DEWLETA EMERIKAYÊ

Cezayir —A.F.I. Bi hênceta sersala istiqlala Emerîkayê General De Gol telgrafa jêrîn şiyandiye miletê emerîkanî: Bi hênceta sersala istiklala emerîkanî silavan li miletê emerîkanî dikim. Emerîkanî îsal eydaniya sersala xwe a istiqlalê di dema şerî de dikin. Ev ji bona azahî û serbestiya xwe û ya cihanê şer dikin; ji ber ko azahî û serbestî naye lêkve kirin. Frensa tenişta Emerîkayê de ye; ji bona azahî û serbestiya dinyayê,ji bona pêkanîna cihaneke nû û serbest.

# CENGÊN HEWAYÎ

## Hevalbend Li Her Derê êrîşî Mihwerê Dikin

Di Eniya Behra Spî de, refên brîtanî û emerîkanî bi şev û bi roj hêjagehên bajar û şaristanên talyanî didin ber bomban. Hefta borî çekê hevalbend ê hewayî li balafirgehên erdê Yewnanistanê jî xistine û dirêjî waporên Mihwerê kirine. Refên brîtanî û emerîkanî ji aliyê din bombardimanên erdê Germanistanê û erdên vegirtî ango axa Frense, Belçîke, Holende û Norvecistanê pêş ve dajon. Hefta borî Hamburg, Koln, Boxum, Wupertal, Elberfeld bi awakî gelek dijwar haitne bombardiman kirin. Di ser eniya Sovyetistanê re jî şerîne hewayî ên xurt dom dikin. Leşkerên emerîkanî û Ingilîzî pê li erdên giravên Pasifîkê kirine.

HEFTÊ Û ÇAR HEZAR BALAFIRÊN NÛ TÊNE ÇÊKIRIN

Weşington—R: Karxaneyên emerîkanî ji nû ve 74.000 balafira çêdikin; 36.000 bombeavêj û 38.000 neçîrvan.

Moskû— Refa Frensizî Normandî di eniya şerê rûsî de, der pêşiya elemana ji nû ve serfiraz bûye, balafirvanên vê refê, şevekê de 5 mekîneyên elemanî avêtine erdê.

# QALA HEMI ENIYAN

## Li Her Eniyê Hevalbend Zora Mihwerê Dibin

Radyoa Moskovayê bûyerên hefta borî tîne pêş çavê xwe û dibêjê: Di erdê elemana de taxe, bajar, bender, şaristan destgeh û febrîqan bi derbên bombeyên Hevalbenda bûne kavil û xirbe.

Elemana zaroa xistine şûna mirovên ko çûne eniya rohelatî. Bala firên elemanî êdî nikarin ezmanê erdê xwe, ji ta'da hevalbenda bi parêzin û ezmanê Germanistanê de refên hevalbenda bi serbestî digerin.

Di Etlentîkê de zora noqavên elemanî hatiye birin, û êdî qefle waporên hevalbenda di behrên dinyayê de bi selametî geşt û guzar dikin. Behra Spî—Stola talyanî nihû nikare ji bendera derkeve û bikeve Behra Spî, ji ber ko Behra Spî, di destê Hevalbenda de ye. Di Hindurî italyayê de xelk ji vî şerî, ji şerê Musolînî û peyayên di wî aciz in û aciziya xwe vekirî dibêj in; heta niha bi vê tomet ê 11.000 talyan hatine girtin û avêtin zêndana.

Cezayir—R: Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî elam dide: bombeavêjên me Welington êrîşî Mesînayê kiriye; Refên me ên din karê xwe ê didevanî û nobetdariyê pêk anîne, ji wan êrîşana du mekîne venegeriyane warên xwe. Duhî topên me ên balafirşiken, di ser Pantelariyayê re, 4 mekîneyên dijmin anîne xwar.

DI EFRÎQA BAKURÎ DE



Tevdanine eskerî ên mezin. Hevalbenda bi vî awayî erdê Efrîqayê ji leşkerên Mihwerê bi timanî paqij kirin e.

# Eskerek



Reşik şerevaniyine bi zirav û eskerine sernerm in.

SERPÊHATÎ

### Çîreka Rovî û Jîjo

Carekî rovî û jîjo di cihekî daristan de, bi hevaltî ji bo nêçîrê digeriyan, ji nişkekê ve dawek beranan li erdê dîtin, jîjo ji rovî re got:

— Fermo bi xwe; rovî got: ez bi rojî me, tu bixwe, jojî dev avêtê dawê û dam (xefik) lê teqiya û lingê wî girt. Gava rovî dît goştê bêtirs ma, dirêj kir û dest bi xwarinê kir. Jîjo (şojî) gote rovî: Mane te digot ez bi rojî me.

— Got: belê ez bi rojî bûm, lê roja şikê ye, girtin heram e, jîjo got;

— Her tu xwe diparêzî û hevalê xwe di kortalên bê eman wer dikî. Qenebe tu were nik min, tenbiya mal û çêliyên xwe li te bikim. Rovî got: bêje; jîjo got: nabe, nêçirvan bi me bihesin, were devê xwe têxim guhê te û bêjim. Gava rovî guhê xwe da ber devê jîjo, gezek li guhê wî da û xwe kişande nav qalikê xwe bi stirî; rovî lava kir ne kir berneda û goti-yê: — madam te ez xistime vi halî, ez jî te bera na din heya sibehê; xwediyê xefikê bê, wê te bikuje û min berde, wê bêje ev rovî besî min e. Bû sibe, xwedî hat û rovî girt û kuşt û jîjo ber da; ê rast kutah (xelas) bû ê hîlebaz giha heqê xwe.

BRAHÎME SEYDA

# DEMA NIHA

## GENERAL SIKORSKI

### Serekwezîr û Serdarê Ordiyên Polonî Hatiye Kuştin

Londre—R: Balafira ko serekwezîrê Polonî General Sikorskî dianî Londrê, di nêzîkî Cebeltariqê de ketiye erdê û General Sikorskî hatiye kuştin.

Rome— Radyoa Romayê duhî digot: hawîrên selahiyetdar bawer dikin ko Ordiya Sor haziriya xwe kiriye û êrîşa sovyetî ber bi destpêkirinê ye.

Weşington— R: Leşkerên Hevalbenda di erdên Nû-Gineyê û yên giravên Silêmane de pêş ve dikevin.

Cezayir — A.F.I. General Katrû roja şembê hatiye Bêrûtê: ew ê heftekê di Suriye û Libnanê de bimîne.

Londre— A.F.I Elemana ji nû ve di Norvecistanê de zehf miro vên hêja û yekan girtine û avêtine zêndanan.

Londre—R: Şevêdî refên brîtanî ji nû ve bi ser Germanistanê de girtine, lê kitkitên vê êrîşê hêj ne hatine belav kirin.

Londre—R: Zehf refên Kenadî û Nû-Zelandî hatine Ingilistanê û têde qerargeh girtine.

Nû York—R: Li gora Nûçeya ko ji Cezayirê hatiye Asosiyeted Pres, General Jîro ji Cezayirê rabûye û berê xwe daye Emerîkayê.

Londre—A.F.I. Nivîsevanê Brîtanovayê ê eskerî dibêje, Êrşên emerîkanî yên Pasîfîka Nîro-roavayî destpêka şerîne hêj mezintir in; ji wextê ko japona ji Guadelkenalê hatine avêtin, hevalbenda qiwetine mezin anîne Pasîfîkê.

## Mîrê Mezin û Mezinê Mêran, Xortê Xurt Zanayê Kurd

Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Hevalo! Di van rojan de Roja-Nû, weke rojeke geş, tav û tîrêjên xwe dane dîwarê me jî yê xortan. Çirûsk û ronahiya wê, leylana paşketin û bêhêviyê, ji ser dilên ciwanên Kurdan hildane. Kela jiyîna welêt ji gela mirinê gihande delawê serbestiyê.

Bûka xweşxwan û nivîsaran xemiland bi qumaşê evîn û zanistiyê. Pira nejadperestî bi topên baweriyê daweziran û di tangê dilxwestiyê de afirand. Ji wî riya wa dûr bi hezaran kîlomêtir şose kir û derê bajarê armanca me, li me vekir. Xwedê te û Roja te birukî spî û jîneke direj ji kurdan re bihêle. Ji ber xortan ve roja te pîroz be.

CEGERXWÎN

### Pîroznamê

Roja-Nû, tu gelekî bi xêr hatî. Ji miletê Kurd re pêpar (siûd) bî. Jîna me a tevayî, ji tîrêjên te ên zer û tûj teva dibe. Lêbelê berî tu derkevî, nejadê kurd gelek çevreşên dilbirîn û dijwar bihartin. Kusûfa te beriya sariya spêdê dest pê kirî bû. Ji lewre tu dereng hilatî. Gaziya Hawarê. Ev hilavêtina te bi awakî adetî pêk hat. Lewre «Ronahiyê» di pêşiya te stûneke gewr peyda kir. Vê ronahiyê ji rohelat hengura şevê paqij kir, ber bi roava ajot gihande jeberê ferat tixûbê yar û neyaran. Hêja tîrêjên te bîrûsîn û baskê xwe avêtin lat û zinarên çiyayên Kurdistanê. Bi vî ronahiyê her karên gelêr û tîvel tête kirin. Her newal û şkeftên tarî ji nêç'ewanan re bû haziriya armancan. Li gora ko çavê merov li ber rojê nayête vekirin. Lê benga ez li te dinêrim bêî ko çavê min hêstir bike Nemaze nabênijim jî.

Çima? Hevqas bi min xweş tê. Ji ber ko heçî nexweşî û mîqerobin (anefîl) hene bi wan tîrêjan têne suhtin; û wek pertavê, wan dibirêje. Van janên giyanbir winda dike û vê brûskê roniya jankuj zende dibe. Belê her derketiyên nuh kevinbûnek wî heye. Lê kevinên binge hî her û her nûreng in. Herwekî «Nûroj» berî çend sed salan dîsa wekî niho ji welatê me heya erdê Awropayê çû û li cihanê pêde belav bûye. Ma ne ev cejna me ye ko hemî nejadan ev jî wek cejnên xwe ên welatîn diparêzin û bûye destpêka salê.

Ma di zimanê me de «Roja-Nû» û «Nû-Roj» çi ferq heye.

Spas ji «Roja-Nû» re. Xwe ne hêvişand û bi awakî zanistî tejî, kirasekî nû li xwe kir û bi dengekî nû kete guhên welatiyan.

Ev dengê te xewaran şiyar dike. Kirasê te bi tîp û klîşe û deqine welê ne ko hêj li destxetî çênekiriye û tu kesî li bejina xwe ne kiriye. Ma ev kirasê giranbeha ne ji bo bûkitiya Zînê ye. Ev kembera sor û kesk û di nava wî de rojeke zer ne ji bo dest avêtina Memî ye. Her bijî pêkaniyê daweta mezin. Em hemî xwendiyên te ne.

H. HIŞYAR

### Perçala Roja-Nû

Li gora awayê rojnameyên siyasî divê ko xwendevan ji Roja-Nû re her bûyerên welatî bişînin. Ji xwe stûnên Roja-Nû, ne ji bo tiştên çîrokî, lê nemaze ji bo rewişa dinyayê pêk hatine. Ji çîrok, dîrok û şihir re pelên Hawar û Ronahiyê vekirî ne. Roja-Nû bi tenê ji bo newçeyên derve û hundirî û hin nesrên ko gerînendeyê berpirsiyar biecibîne ye.

Ji lewre divêt ya me jî, wekî xelkê rojnameke tekûz û bêkêmasî be. Di doza welatîniyê de ev rojname ji me re rewş û pergaleke navdar e. Ji ber vê yekê tiştên ko jê re bêne şandin divê hêja û li ba her iyaniyên pispor bêne ecibandin. An ne nivîsarên nehêja divêt bêne tenqîd kirin.

H. HIŞYAR

## Dibistana Kurdî a Bêrûtê

Ev e navê Mîrza û Mîrzeyên ko tînê, di Dibistana Bêrûtê a Kurdî de hînî xwendin û nivîsandina zimanê xwe bûne: Ma. Seade Elî Botî, MM. Sileyman Hesen Mercê, Xelîl Silêman Dêrikê, Çaçan Merzikê, Brahîm Mehisnî Merzikê, Mihemed Selîm Tuhê, Silêman Brahîm Xiznê, Ebdilkerîm Kindêrê, Ebdilkerîm Etmên, Mihemed Nûr Mihelmê, Tahir Milêzinê, Mîrxan Racnî, Heci Nûr Botî, Şêx Mûs Mehmûd Qesrikê,

# MIREKA CIHANÊ

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞTIYÊ

## WÊNEYÊN ENIYA ROHELÊT



TANGEKE SOVYETÎ A MEZIN. DINYA ZIVISTAN E.
Eskerên rûsî kurkine spî li xwe kirine, wilo çavê dijmin zu bizû li wan na keve.



Ava Robara boş bûne, erebeyên elemanî ên eskerî li avekê derbaz dibin; îşê wan zehmet e.



Karxaneyên rûsî her meh bi hezaran tang çêdikin. Ev tangên he nemaze ji bona çerên zivistanê gelek bikêrhatî ne.



BALAFIREKE SIVIK Û BI LEZ
Ev mekîneyên he karê nobetdarî û dîdevaniyê pêk tînin.

Sal 1 — Hejmar 12-13

Duşemb 19 Tirmeh 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

# OREL - KATANE - MUBO

## STÊRA SERBESTIYA MILETAN DIBIRIQE

### Li Rohelat û li Roavayî, li Behra Spî û Pesifîkê Hevalbend Serfiraz in

NÛ-YORK—R: Êdî leşkerên Ordiya brîtanî heşt, ji Katanê bi tenê 9 kilomêtir dûr in.

CEZAYIR—R; Yekîneyên Ordiya brîtanî, ji du aliyan ketine deşta Katanê, êrîşa wan bi serdestî pêşve diçe. Di nîzîkî Augustayê de qiwetên Mihwerê ên zirhkirî bi xurtî berberiya ingilîza kirine lê hatine şkênandin û paş ve zivirandin. Stola hevalbenda 3 gundên Katanê dane ber gullan, ev her sê gund hatine vegirtin. Leşkerên emerîkanî di hêla bakurî de li erdeke asê, di nav bira çiya û kortalan de pêş ve dikevin.

Radyoa-Cezayirê elam dide ko qiwetên hevalbenda, di tevayiya qad û eniyên şerî de, pêş ve diçin.

CEZAYIR— Qerargeha Hevalbenda a Mezin li Efrîqa Bakurî dide zanîn: Serfermandar General Eyzenhower, General Aleksander ki riye hakimê girava Sicilyayê ê eskerî

CEZAYIR—R: Nûçegihayê ejensa Royterî elam dide: Yekîneyên elemanî yên ko axa Katanê midafihe dikirin di pêşiya zora Ordiya Brîtanî 8 de, xwe bi şunda kişandine, û ketine çeper û penahên pêşiya vê şaristanê. Eskerên emerîkanî yên ko ber bi Agrigentoyê ve dimeşiyan niho jê bi tenê 4 mîl dûr in.

CEZAYIR—R: Yekîneyên Ordiya 8, bi arîkariya eskerên hevalbenda yên ko bi sihvana, ji balafira daketine erdê Sicilyayê, balafirgeheke din jî zeft kiriye.

LONDRE—R: Bi awakî resmî didin zanîn: Duhî bombeavêjên emerîkanî ên giran bi ser bajarê Amsterdam û Germanistana bakurî de girtine û hejagehên neyara bombardiman kirine. Refên emerîkanî 50 balafirên dijmin avêtine erdê.

MALTE—R: Nêçîrvanên qerargeha Maltayê di nav 7 rojên da wîn de—ji wexta ko êrîşa Sicilyayê destpê kiriye— 151 balafirên Mihwerê anîne xwar, 35 nêçîrvanên vê qerargehê venegeriyane warên xwe, lê 5 balafirvan di selametiyê de ne.

CEZAYIR— Radyoa-Cezayirê elam dide: Leşkerên Hevalbenda di Sicilyayê de 35.000 hêsîr girtine.

CENG & SIYASET

## DEWRAN

BER BI AZAHIYA NIJADAN

### Eniya Sovyetî

Rojnameyên payetextê brîtanî qala eniya rohelatî dikin û dibêjin: êdî tu şik nemaye ko qidreta elemana a eskerî serberjêr ve diçe, û delîlên vê kêmkirinê di şerên Orel—Kursk û Bielgorodê de, bi timamî hatine dîtin. Rojnameya Ingilîzî «Deylî Kronikl» dinivîse: Bê şik e ko Serdariya elemanî dixwest bi derbeke giran zora Ûrisa bibe û li gora hisabê Moskovayê elemana 100 firqe esker anî bûn Orel—Kurskê, nîzîkahî ve nîvê qiweta elemanî ji ya ko di pêşiya Ûrisa de ye. Êrîşên elemanî 10 roj dom kirine û li wê qadê şerine zor û xwîndar çêbûne; 3.000 tang û 1500 balafirên elemanî hatine xira kirin û elemana nikarî bûn tiştekî hêja pêk bînin. Niho êrîşa sovyetî destpê kiriye.

### Vegirtina Sicilyayê

Serêkwezîrê Brîtanya Mezin Mr. Çorçil, berî sêsala digot: rojek wê bê, emê dirêjî erdê Ewripayê bikin, û pê miletên Ewripayê, ji hikm û zorkeriya elemana xelas bibin. Ev tişt ne diket serê mezinên Mihwerê û wan qeşmeriya xwe pê dikirin. Lê îro çend roj in leşkerên Hevalbenda, qiwetên brîtanî, emerîkanî û frensizî pê li erdê Sicilyayê kirine û pey hev bender û şaristanên vê giravê zeft dikin.

Hitler qala bedena kelata Ewripayê dikir, di Sicilyayê de ev beden hatiye neqeb kirin û pê hîm û bingehên bedenên Ewripayê ên mayîn dilerizin.

### Di Derya Pasifîkê De

Sefîrê japona û Nimînendeyê dewleta japonî ê xas, li Waşingtonê di Qesra Wezareta Dervekariyê de rûniştî bûn û bi wêzîrê emerîkanî ê dervekariyê, li ser dostaniya her du dewletan diaxaftin ko, derî vebû û telegrafek anîne û dane Wezîrê emerîkanî ê dervekariyê. Telegrafê digot: Refên japonî dirêjî qiwetên emerîkanî kirine. Wezîrê emerîkanî lê ecêbmayî ma, lê belê, herwekî kubariya wî ji erna wî mezintir bû, bi giranî telegraf şanî diplomatên japonî da û got: tiştekî holê di dinyayê de ne hatiye dîtin. Japona çend roj şahinet kirine.

Lê niho, rojên reş û giran bi ser wan de tên.

### Dawiya Vî Şerî

Şerê 1914—1918 an, bi Serfiraziya hevalbenda qediya bû, ûpê zehf miletên dinyayê gihane azahî û serbestiyê, û piştî wî şerî nemaze miletên Rohelatê Nîzing û Navîn pêş ve ketine. Miletên dinyayê ên hêsîr û heq-şkênandî, jî wextê ko vî şerî destpê kiriye, dilê wan de hêvî û niyaz li Hevalbenda dinêrin û li gora taqetê arîkariya wan dikin. Hevalbenda jî wa'd daye ko miletên dinyayê hemî wê bigehin azahî û serbestiyê. Ji xwe şertê selametiya dinyayê ê mezintir û qaimtir ev e.

# DER SOVYETISTANÊ

### Ordiya Sor Ber Bi Orelê Ve Dimeşe

LONDRE—R: Di nav deh rojên êrîşa elemanî ên pêşîn de qiwetên rûsî 1.500 balafir û 3.000 tangên elemanî xira kirine.

MOSKÛ—: Pêşmêrên rûsî gihane taxeyên şaristana Orelê ên dora bajêr, û yekîneyine rûsî ên din rêhesina Orel—Brianskê biriye.

MOSKÛ— Her çend jî Serdariya elemanî qiwetine mezin aniye qada şerê Orelê û ew xistine şer; li wê pêşveçûna lekên şerevaniyên rûsî hinik girantir bûye, lê ne sekiniye.

MOSKÛ—A.F.I. Serfermandariya sovyetî dide zanînn: Di hêla Orelê de, leşkerên me zora dijmina birine û pêşve çûne. Di eniya Bielgorodê de tevdana kewte û sedmêran. Duhî di eniya Orel—Kurskê de qiwetên me 168 tang û 106 balafirên elemanî xira kirine. Yekîneke rûsî bi serê xwe 3.000 eskerên elemanî qelandine û 28 tang, 48 top, 30 qumbereavêjên çepera ji hev de xistine û jê pê ve hêsîr girtine. Di bakur-rohelatê Novorosiskê de, topçiyên me çeper û penahên elemana bombardiman kirine, û peyadeyên me bilindahiyeke hêja vegirtiye.

# MUBO HATIYE VEGIRTIN

### Zefera Eskerên Emerîkanî û Ewistralî

LONDRE—A.F.I. Leşkerên ewistralî û emerîkanî di axa Nû-Gineyê de zora Japona birine û bajarê Mûboyê vegirtine, Mûbo dikeve nîro-roavayê Salamauayê û jê 25 kilomêtir dûr e. Di Salamauayê de, qerargeheke Japonî î mezin heye. Ji aliyê din leşkerên emerîkanî gihane nîzîkî Mundayê; di ser vê erdê re şerekî hewayî î mezin çêbûye, refên emerîkanî 30 nêçîrvan û 15 bombeavêjên emerîkanî xistine erdê.

NÛ-YORK — ji destpêka şerî û heta îro, japona 1.200.000 ton mezin wapor çêkirine; qiwetên emerîkanî heta niha 116 cengkeştî û 300 gemiyên japonî ên bar, banzîn û eskerkeş bin av kirine, hemî bihevre 2.200.000 ton mezin. Destgehên emerîkanî di nav çar heftan de, jiwaporên ko japona salekê de çêdikin bêtir gemiya têxin behrê.

CEZAYIR—R: Ji Qerargeha Hevalbenda a mezin hatiye seh kirin ko Ordiya Mihwerê a Sicilyayê ji 324.000 esker bihevketiye; 264.000 talyan û 60.000 eleman.

## BOMBARDIMANEKE XURT

PÊNC SED BALAFIRAN ÊRÎŞÎ NAPOLÊ KIRIYE

CEZAYIR— 500 balafirên Hevalbenda bender û şaristana talyanî a mezin Napolî bombardiman kiriye.

CEZAYIR— Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî elam dide: di nîroyê Katanê de leşkerên Mihwerê bi xurtî berberiya me kirine. Leşkerên emerîkanî piştî vegirtina Agrigentoyê ji nû ve pêş ve çûne. Heta niha 3.000 hêsîr hatine girtin; têde 3 general jî hene. Refên Hevalbenda ên mezin bendera Napoliyê bombardiman kirine; bombe xurt û rast li destgeh wapor, depocebilxane, hêjagehên rêhesinan û li fabrîqeyên torpîlan ketine.

# KARLO SKORZA

### Di Radyoyê De Gotiye

ROME—Karlo Skorza, nivîsekarê fasista ê amdagirtî duhî di radyoa talyanî de peyiviye û gotiye: Italya di şerî de zorê dide xwe ji ber ko dixwaze xwe xelas bike. Em bi awakî vekirî dibêjin, taluka ko welatê me tê de ye gelek mezin e. Di tarîx û dîroka me a dirêj de, deminê hinde dijwar nîne. Du kuşwerên mezin, kişwerên dinyayê ên xurt û dewletmendtir bi qesda xira kirina Italyayê êrîşa me dikin.

Italya bi vênevê, heta dema mirinê divê şer bike da ko bi kare jivê talukê bifilite.

CEZAYIR—A.F.I. Leşkerên emerîkanî bi kûrahî 50 kilomêtir ketine erdê Sicilyayê.

CEZAYIR— Du generalên talyanî hatine hêsir girtin.

MELBURN— Qerargeha Hevalbenda a mezin li Pesifîka nîro-roavayî elam dide: refên hevalbenda di behra Pesifîkê de ji nû ve 7 waporên Japonî bin av kirine û li qerargeha japona ya Salamauayê xistine.

CEZAYIR—R: Qerargeha Hevalbenda a Mezin li Efrîqa Bakurî serê sibehê elam da ko leşkerên emerîkanî bi êrîşeke xurt bajarê Agrigentoyê zeft kiriye.

LONDRE—A.F.I. Elemana di peravên Belçîkayê de zehf otel û avahiyine mezin ber hewa kirine û di cihê wan de, asêgeha çêdikin.

ROME— Danezaneke talyanî elam dide ko bi bombeyên hevalbenda di bajarê talyanî Livurnê de 252 peya hatine kuştin û 503 heb jî brîndar bûne.

LONDRE—R: Emîraliya Brîtanî dide zanîn: qiwetên brîtanî ên behrî î sivik di behra peravên Holendayê de dirêjî qeflewaporeke elemanî kiriye û jê gemiyek xerîqandiye û xesar gihandiye hin ên din. Tu xesar ne gihaye yekîneyên brîtanî.

# DEMA HINA

CEZAYIR— Qeraregeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî elam dide: Leşkerên emerîkanî di eniya Sicilyayê de, li qada nawîn û a roavayî, êrîşa xwe pêş ve birine. Der hela roavayî berberiya dijmina sist e û eskerên wan bi sedan ve xwe davêjin bextê me. Eskerên Kenadî li Sicilyayê zora leşkerên dijmina birine û pêş ve dikevin. Qiwetên Mihwerê bi qesda xelaskirina Ketanayê, bi awakî ecêb zorê didine xwe; xesarên ko heta niha gihane wan gelek dijwar in; Ordiya brîtanî, di wê qadê de qiwetên xwe kom dike. Duhî 500 bombeavêjên me, êrîşî Romayê kirine û hêjagehên payetextê talyana ên eskerî, dane ber bomban. Stasyon, kar û bar û gehînekên rêhesinan yên San Lorenzo û Litorioyê bi timamî hatine xira kirin; jê pê ve bombeyên me xesar gihandine polaxanekî mezin û febrîqeyên kîmyayê.

ROME— Danezana talyanî elam dide: bi bombardimanên Hevalbenda di Romayê de 166 peya hatine kuştin û 1659 heb jî brîndar bûne. Danezan jê pê ve elam dide ko refên hevalbenda li Napoliyê û li bajarên talyanî ên din jî xistine.

BERLÎN— Pisporê eskerî general Dîtmar duhî di Radyoa Berlînê de mukir dihat ko hevalbenda qiwetine mezin derêxistine erdê Sicilyayê.

CEZAYIR— Yekîneyine kenadî ên mezin gihane Enayê. Stolên Hevalbenda riya Katane-Messînayê bi xurtî bombardiman dikin.

NÛ-DELHÎ— Refên brîtanî li pir û riyên erdê Akyabê xistine û jê pê ve qerargehên japona yên Ratedongê û gemiyên şetên Irawadî û Şindwînê dane ber bomban; mekîneke brîtanî bi tenê venegeriyaye warê xwe.

LONDRE— Danezana ko duhî êvarê di Berlînê de hatiye belav kirin elam dide ko Hitler û Musolînî di Italya Bakurî de, li bajarekî hev û du dîtine.

LONDRE—R: Wezîrê brîtanî ê şerî Sir Ceymis Grîg duhî êvarê ji bona qedirgirtina general Jîro sifreke mezin daniye; sefîrê emerîkayê Mr. Con Wînan, General Devers, Emîral Stark û Ceneral Îker di nav vexwendiyan de bûn.

# GOTARA GENERAL JIRO

## SÊSEDHEZAR FRENSIZ LI BER DEST IN

WEŞINGTON— Serekcimhûr Rûzwelt ji bona qedirgirtina General Jîro sifreyek daniye. Piştî şîvê, di civana rojnamevanan de General Jîro bi navê xwe û bi navê General De Gol û Komîta Frensizî a xelasiya welêt gotiye: Me bi Serekcimhûr Mr. Rûzwelt re qerar daye û ji 300.000 eskerên frensizî yên ko li ber destin 260.000 heb, bi çekine nû û nûjên dê bêne biçek kirin. Ordiya frensizî a sibe, wê bibe mîna Ordiya frensizî a duhî, ya ko nasî cihan û dîrokê ye. Frensê û Hevalbendan destê hev û du girtine û Frensê bi hemî qiwetên xwe, xwe gihandiye Hevalbenda. Em dizanin ko bi şkênandina Eleman û talyana ev şer naqede, û li wê aliyê dinyayê t'adakerekî din heye û divê ew jî bielime ko hîmên cihanê ên exlaqî li gora kêf û dilxwaza, nikarin bêne xira kirin, û yê ko vî tiştî dike, têtê êşandin Ez we têmîn dikim ko Frensa di teniştа we di bibe, ji bona xelaskirina Pasîfîkê ji destê japona û zorkeriya wan, û ji bona avakirina cihaneke nû û danîna silheke adil. Ko carekî top, tang û balafir ketin destên leşkerên frensizî, ewê şanî dinyayê bidin, pê çi dikarin bikin.

# FERMANA MALA BRAHIM PAŞA

## SALA 1919

Wezîro bajo li vê fermanê, ev fermana wek fermana cara hanê; ferman rabû ji Cumhûrîyetê ji Selanîkê ji Anqerayê ji meb'ûsanê. Sibe bû şerek çêbû li tel—Henê li Etşanê, şahidê Mehmûd Begê Zerî exû Nûra ebû Ezza gelek hene ji tel Henê heta li Wêranşarê, bi şûra girtin, xar berdanê Bêlûka Hemdîn Begê, hêsîr kirin Ajat xanê... Kunya Ramê sera mezin şixat girtin ar berdanê. Kesek tune li şerê Kurê Brahim Paşa rab temaşê rab seyranê. Pêşiya duxana ewraqê mehkûma xwe da tel—Henê, da Etşanê gelek xelas kirin ji Bêşê û ji qan çarê ji salyanê. Bego sibe bû şerek çêbû li Etşana xopan li diyara ji nîro b' şûnda li Wêranşarê, tê dengê topa leqî-leqa şerap-nara şahidê Mehmûd Zerî gelek hene eqal xwar kir da ber swara. Ji tel—Henê heta b'Wêranşarê ajot nava qumandara Bêlûka Hemdîn Begê hêsîr kirin pişta wan da dîwara. Mehmûd Beg ban kir Evdirehman keko ev ferman ji berêda fermana bav û kala wexta di gaziya me were Temir Beg swarê Hedla bavê Xunêsa, gurê swara, Hêsîrê me Hustu xwarin li ber dîwara birîndar e. Elo Dado exû Rîma gurê swara, li dialya xopan li beyara li kerûkê li va xubara pêşiya. Ramê xwe da Nebî Eyûb eleyhisselam tev zabita qumandara Dawî ma li kêşê û li mizarê li gundê Evdilqadir Rahil-elya tev teresê wan neyara. Bego bajo, me lezîne, yawaş bajo me leqîne, Xensê ban kir Mehmûdo lawo şev dirêj e, qiyamet dûr e, Nefîramê bi hev gihîne dizgîna Mitêra li dest b' gerîne guçê şal qedîfa li milê xwe werîne, ji nîro b' şûnda dengê mala keleş Evdî bi Ramê ra tê Nizam kîw û kîne şahidê Evdurehman bavê Haçim, biçûkê bira gelek hene, li kêleka rastê xerzanî ne, serê xerzaniya lî û yaban doz lê gerandîne. Xensê ban kir Mehmûdo lawo bazde xwe b' rêka Weranşara şewitî gihîne, lêxê serê topçî û borîzana, bifirîne topa mezin, cûra dev reş jê bistîne. Heyfa milk û meaşê Brahîm Paşa jê hilîne, lêxê navê bav û kalê xwe bi derxîne, êşîr şîrîn me terkîne. Ram xaîne, me di xapîne, mala we ji berê da ji Dewleta fermanlî ne. Xensê ban kir Mehmûda lawo wexta Xelîl Beg swarê fîreca ebû Subhî xwe bi we gihîne, li edwan û ehlê Ebrê bi qirîne, bazde xwe bi rêka Nebê Eyûb eleyhisselam xwe bi derbendê asê gihîne, tomatîqa, axir makîna li ber reqîne, topa mezin cûra dev reş pê gumîne.

(ne qediyaye)

EBDILAHDÎ MIHEMED

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞTIYÊ



Eskerên Frensizî Di Pêşiya Dergehê Serfiraziyê De Dimeşin



Ji Bergehên Parîsê Meydana Konkordê

1ère ANNÉE — LUNDI 19 JUILLET 1943 — NUMERO 12 - 13

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Jamais, depuis 1940, le 14 Juillet, symbole quasi universel de la Liberté, n'a été aussi lourd de sens que cette année: la machine de la Libération est en marche et rien maintenant ne peut l'arrêter. Sur les trois fronts de la Méditerranée, de la Russie et du Pacifique, les Alliés s'attaquent déjà victorieusement à la ceinture de protection de l'ennemi.

L'offensive lancée il y a une dizaine de jours contre la Sicile, a dépassé par son succès, ce que les plus op'imistes auraient pu espérer. Les conditions du débarquement pouvaient être au début tellement précaires, si l'on songe surtout à l'étendue de la Sicile, aux 400.000 hommes qui la défendent, au système de défense qui a pu être mis au point depuis longtemps et au voisinage des bases italiennes, que nous ne pouvons qu'admirer sans réserve la perfection du plan d'attaque et de son exécution et rendre un hommage complet aux stratèges qui l'ont élaboré. Il est vrai que ceux-ci ont en main les atouts suprêmes de la marine alliée que la marine italienne n'ose affronter et de l'aviation qui est à peu près maîtresse absolue des airs. Aux dernières informations la pointe Ouest de l'offensive avait atteint Agrigente et Port Empedocle occupées Dimanche par les troupes américaines cependant que les magnifiques troupes du Général Montgomery étaient sur le point d'occuper Catane à l'Est. La pénétration atteint déjà une cinquantaine de kilomètres à l'interieur, menaçant gravement les voies de ravitaillement de l'ennemi. A cette cadence, les observateurs militaires estiment que l'affaire de Sicile pourrait être liquidée avant la fin du mois.

Sur le Front Oriental nous assistons à un revirement complet de la situation. Pour la première fois depuis 1941, ce ne sont plus les allemands qui lancent une offensive d'été mais l'armée Rouge. Les opérations sont aujourd'hui symétriques des opérations de l'an dernier. En 1942 en effet les Russes attaquaient Kharkov pour essayer de désorganiser les plans tactiques ennemis et peu après ceux-ci commençaient leur offensive qui devait les mener loin à l'Est. Cette année les Allemands attaquent le saillant de Kursk, échouent dans leurs tentatives et maintenant les Russes, comme si la dernière offensive allemande n'avait pas existé, lancent une grande offensive contre Orel qui déjà est menacée de trois côtés après une avance de plus de 60 kms.

Et enfin dans le Pacifique, après la prise de Mubo en Nouvelle Guinée, se sont les bases de Salamowa et de Munda qui sont sévèrement menacées malgré des contre attaques japonaises qui cependant y perdent un nombre considérable de bateaux, d'avions et d'hommes.

La Bastille fasciste est bien en vie de démolition!

D.

## NOUVELLES DE FRANCE

*A l'occasion du 14 Juillet dernier, les patriotes Français ont manifesté, chacun à sa menière.*

*La population de nombreuses villes de France, obéissant aux directives du Comité de la Libération Nationale, a marqué cette journée en défilant silencieusement dans les rues.*

*A GRENOBLE, la manifestation a provoqué des collissions entre la foule et la police, la ville ayant manqué de pain, ce jour-là parce que la farine qui lui était destinée avait été réquisitionnée par les Allemands.*

*A PONTOISE, un chef de la police parisienne au service de l'ennemi a été abattu par des patriotes. Un autre traître a été exécuté dans le département de l'EURE.*

*Un gendarme italien a été tué en Haute Savoie. A ANNEMASSE, une bombe a fait explosiondans le logement d'un fonctionnaire italien et de nombreuses arrestations ont été effectuées à la suite de cet attentat.*

*« Ce n'est plus une seule Bastille, c'est une multitude de Bastilles qui couvrent aujourd'hui le sol de France» a déclarait Radio Moscou:*

*« Les Prussiens qui, en 1870 avaient envahi la France étaient les mêmes Allemands, cruels et brutaux. BISMARCK avait dicté à la France des conditions de paix dures et humiliantes, mais il n'avait pas osé occuper le pays et s'était contenté d'un défilé symbolique de troupes prussiennes sur les Champs-Elysées.*

*« En 1870 les Prussiens avaient quitté la France en emportant avec eux autant de butin que leurs fourgons pouvaient en contenir. Mais en quittant la France ils ont laissé au coeur des Français une haine tenace pour l'invasion et l'humiliation vécue sous la botte allemande.*

*« Les Nazis, eux, n'ont même plus cette ombre de scrupules, cette apparence de gêne qu'avait BISMARCK. Ils ne pensent même pas que l'humiliation qu'ils ont infligé à la France, que la haine qu'ils ont semées à pleines poignées dans le sol français, leur porteront des fruits amers. Les Hitlériens disent avec arrogance: «Qu'ils nous haissent, mais qu'ils nous craignent.»*

*Mais l'heure est venue où le peuple français hait toujours les Allemands mais a cessé de les craindre, et le jour n'est plus loin où le peuple de France prendra d'assaut la Bastille allemande et ce jour-là sera pour les Allemands un véritable Jour du Jugement dernier.»*

## LA SITUATION EN SICILE

Une semaine s'est écoulée depuis l'invasion de la Sicile par les forces alliées. 20 villes, 9 aérodromes et près du quart de la superficie totale de l'île, abritant plus de 900.000 habitants, ont été occupées par les troupes anglaises, américaines et canadiennes. Les dernières dépêches de la nuit annoncent la prise d'Agrigento, enlevée par les troupes américaines à la suite d'un assaut spectaculaire.

Cette ville d'environ 30.000 habitants est la plus importante de la côte méridionale de l'île et commande trois voies ferrées en direction de Marsala, de Palerme et de Catane. Les forces du général Patton ont donc progressé d'environ 65 kms. vers l'ouest depuis leur débarquement à Gela. Agrigento est située à quelques 6 kms. à l'intérieur des terres, derrière Porto Empedocle. Un troisième général italien a été fait prisonnier.

Les résultats acquis par les forces alliées en Sicile rappellent étrangement ceux de la «guerre éclair» alors qu'elle était l'apanage des seules armées de Hitler.

Les Alliés sont aujourd'hui les maîtres de tout le littoral méridional de la Sicile, depuis les environs d'Agrigente jusqu'au Cap Passero, et contrôlent le littoral oriental de l'île jusqu'en un point à quelques 12 kms. de Catane. A l'intérieur des terres, l'avance des armées alliées va jusqu'à Caltanisetta, Caltagirone, Grammichele, Vizzini, à plus d'une cinquantaine de kms. à l'intérieur de l'île, toutes ces villes étant situées à des carrefours routiers de la plus grande importance.

On ne peut plus guère, aujourd'hui se servir de l'expression de «tête de pont» pour définir le territoire tenu par les armées alliées, et les perspectives d'avenir paraissent extrêmement favorables.

C'est au débouché qui va au nord d'Augusta, dans la plaine de Catane que se déroulent actuellement les engagements décisifs de la campagne. Le Haut Commandement ennemi se rend parfaitement compte qu'une fois les Alliés parvenus à cette ville, leur emprise sur la Sicile augmentera par une sorte de progression géométrique.—Les fortifications entreprises étant loin d'être aussi avancées que Rome et Berlin le prétendaient, on peut présumer que l'ensemble du système de défense axiste risque de s'effondrer brusquement sur ce théâtre des opérations.

**Aux dernières nouvelles, les forces de l'axe défendant Catane sont refoulées par la 8ème Armée jusqu'aux approches** immédiats de la ville. Les troupes britanniques avançant rapidement vers le nord ont débordé l'aile droite de l'ennemi. Des détachements alliés sont constamment parachutés sur les arrières des unités allemandes et italiennes et les troupes ayant occupé Scordia, qui domine la plaine de Catane, les hommes du général Montgomery peuvent descendre de ces collines et couper du gros de leurs forces les unités ennemies combattant encore entre Lentini et la côte. On estime que la bataille pour Catane entre dans sa phase finale.

Un rôle de premier plan est dévolu à la flotte alliée qui a réduit au silence les batteries côtières et incendié plusieurs dépôts de carburant à Catane. La flotte tient également sous son feu la route qui relie Catane à Messine, par où doit fatalement passer une partie des renforts et du ravitaillement destinés à l'ennemi. Elle opère jusque dans le détroit de Messine, où 6 vedettes lance-torpilles italiennes ont déjà été coulées.

Le Haut-Commandement des forces de l'Axe s'attendait très probablement à une attaque de la partie occidentale de la Sicile, plus rapprochée des côtes d'Afrique du Nord, et avait massé ses troupes dans l'ouest de l'île. Depuis que les armées canadiennes occupent Caltagirone, les forces italiennes et allemandes ne peuvent plus emprunter que la seule route passant par la ville d'Enna et au pied du versant sud de l'Etna pour rallier soit le front de Catane, si elles veulent encore combattre, soit le port de Messine si elles doivent être évacuées sur la Calabre.

La position des armées ennemies est d'heure en heure moins favorable. Ses communications sont paralysées. La 8è me Armée a écrasé et franchi ses premières lignes de défense dans la plaine de Catane, tandis que les Canadiens et Americains menacent leurs flancs. La propagande italienne prépare déja l'opinion publique à la chute prochaine de la Sicile. De l'avis de certains experts militaires neutres, la totalité de l'île sera aux mains des forces alliées d'ici la fin du mois.

La résistance actuelle des troupes italiennes témoigne uniquement du désir de Mussolini de gagner du temps pour faire venir le plus de troupes et de matériel possible dans le sud de l'Italie. **Mais on estime que la défense y sera particulièrement difficile, étant donné la longueur et la vulnérabilité des côtes de la pénisule.**

T. H.

## POEME KURDE

### POURQUOI?

Pourquoi faut-il m'étonner
Des inconnus de ce monde?
S'il y a un coin dans cette ronde,
Si le printemps est ravi,
Par le parfum, la fraîcheur,
Si le vent sent la douceur
De ces prairies embaumées,
Si une aurore nous attend
Après la nuit de la vie.
Quand mon coeur qui me fait vivre
Et mon esprit qui m'émeut
Me sont parfois inconnus
Comme un passant de la rue

### FUGACITÉ

Comme le soleil
Se penche vers la mer
Pour mouiller sa lèvre chaude,
Ainsi je m'incline sur toi,
Vers tes yeux d'émeraude.

Tu as des mots comme les nuits;
Qui dévorent le charme du soir;
Les orages de l'automne
Desséchant
Les fleurs et l'espoir.

Es-tu le vent de la vie
Qui fait tomber
Les feuilles du coeur,
Ou cette amère nostalgie
Qui pèse sur la tête des buveurs.

DR. BEDIR KHAN

## LA PRESSE KURDE

*Nous signalons, à nos lecteurs s'intéressant au mouvement culturel KURDE, les journaux et périodiques kurdes suivants:*

**RIYA TAZÉ** organe des Kurdes de l'U.R.S.S paraissant à Erivan.

**GALAWÉJ.** la plus grande revue littéraire kurde, parait chaque mois à Bagdad, avec 80 à 100 pages de texte

**JIYAN** hebdomadaire politique et littéraire paraissant à Souleymanié.

**HAWAR.** revue littéraire bi-mensuelle paraissant à Damas. Textes kurdes et français.

**RONAHI** Revue mensuelle illustré, paraissant à Damas.

## RESUME DES NOUVELLES

RUSSIE:— L'étreinte des forces soviétiques se resserre de plus en plus sur la base allemande d'Orel,

L'aviation russe a violemment bombardé les installations ferroviaires et les hangars à Orel, Karacheff et Nedlea.

MEDITERRANÉE:— La 8ème armée britannique se bat déjà dans les faubourgs de Catane. Les forces amèricaines ont occupé Porto Empedocle et poussent vers l'intérieur de l'île.

FRONT OCCIDENTAL:— Activité de la R.A.F. au-dessus de la Manche et du nord de la France.

Résultats des reconnaissances photographiques effectuées au-dessus des derniers objectifs de l'aviation alliée.

FRONT PACIFIQUE:— Bombardement de Nauru par l'aviation américaine et de Guadalcanal par les japonais.

## DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

*Nivisevan* *Grigori Petrof* — 9 — *Wergerandok:* *Qedrî Can*

Ji kesê wisan re, bi dostî şîret d i k i m : Bira dev ji mamostetiyê berdin... ji xwe re li meslekekî din bigerin... bira herin, bibin tucar, di qeleman de bibin katib. Ji ciyê mamostan re, kesên bi can û giyan, kesên bi dil divên... Vaye, li ser hêvî û daxwaza min, zanayên welêt, her yekî, ji we re çend qonfrans hazir kirine. Ji zanebuna wan pardar bibin. Gava hûn vegerin dibistanên xwe, sûxteyên xwe bi evîn (eşq) a ilim aşîna bikin...»

Mamostan, ji bona zanebûnên xwe pêşve bibin, hêj bêtir, dest bi xwendinê dikirin û didan ser rêya rîberên xwe, Senelman... Belê, ji wan her yekî, di zemanekî kin de, quwetekî çandî (hirsî) der di ket, û bi pêncan, bi dehan, bi sedan Senelman pêda dibûn...

Senelman, hişyar bûna «Suomî», tenê bi xebata mamosteyan ne didît... li ku derê civîneke memûran, tucaran, toxtoran dibihîst, hema xwe digîhande wir... û ji wan re digot:

«Milet... ji bîr me kin!... hûn her yek, ji nav milet derketine... Hûn nuha çi dikin? Hûn, ji birayên xwe yên ne zan direvin ? ? ? Hûn, ji bo hişyariya xelkê xwe, bilindkirin û pêşve birina, çanda wan; hûn çi dikin??

ME'MÛRÊN MUREBÎ

Di sala 1816 de, Finlanda îltihaqî Rûsyê bû. Lê bi wî şertî ku ji wan re pêkhatineke bingehî (teşkîlateke esasî) bête dayîn. Ji xwe encumeneke wan a welatî jî hebû. Ji şertan yek jî: ji vê encumena welatî re dayina hinek huquq bû.

Çar Aleksandirê yekemîn, di beyan-nameke xwe de wad û peyman dikir: ku gerek ez û gerek yên bi dû min, emê ji pêkhatina we a welatî re, heta paşîn, riayet bikin...

Carekê bi vekirina encumena welatî «Seymîn» civîneke me'mûran a umûmî çê bû bû. (Senelman) jî di vê civînê de hazir bûbû û têde ji zemanê Isweçan ve hetanî zemanê Finlanda, tarixçeya me'mûrên dewletê çêkiribû û gotibû:

Ehlê Îsweçê, pir xweş, pir bi beş, gelek bi namûs û me'mûrnin şên in. Lê digel vê qasê bi xelas bûna welatê me yî wendabûyî, fe qirmayî... pir kêfxweş bûme... Ez xelasbûna welatê me, ji destên Îsweçan, ji destên me'mûrên wan de ketî dibînim, dilxweş dibim. Li Finlandayê me'mûrên Îsweçan çawa bûn? Evên ha him ji bona Finlandayê, him jî, ji bona Îsweçê bela bûn. Li Îsweçê bi xwe, me'mûrên wan gelek merivnin qenc in û delal in. Lê yên li vir ne wisan bûn. Hukumeta Îsweçê jî, mîna hukumetên din, qenc ne difikirî: me'mûrên xwe yên qenc û hêja di hundirê welatê xwe de, di sernîvekan de di hişt... Ji bona der (mîna welatê me) me'mûrên bêkêr di şandin. Mîna ku di nav her miletî de tên dîtin, di nav malmezin û dewlemendên Îsweçê de jî, merîvên bê şerm, tral, bêkar û bêkêr der di ketin... Ev xortên ji her dibistanê qewitandî, ji tu wezîfa re ne qebulkirî, ji tu ticaretan de kar ne dîtî, ji xwe ne dixwest in kar bikin... serweta bavên xwe wenda dikir in... Hingî bavên wan, ji wan re digotin: «Em ne zanîn çi bi vî lawikî bikin?» Paşê wan re dixebitîn û ew li Finlandayê dikirin me'mûr.

# DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

## GEWR' AM

Bejna te kehrê
Keleha Wethayê
Mi hoste berdanê
Ji aliyê Bexdayê
Mi hoste berdanê
Şagirtî nayê
L' ser sing û berê gewr'am
Kêfa dinyayê

Bejna te kehrê
Kelha Bitûmê
Sefer kira bû
Ez pê de diçûmê.

Ser sing û berê gewrê
Ez teqdîr dibûmê
Bejna te kehrê
Kelha hesinî
Mi hoste berdanê
Şagirtî sekinî.

Hey Weleh tu dîn î
Bileh tu dîn î
Singê te gewrê
Tasik zêrînê

Weleh û bile yê
Aezalek geleyê
Singê te gewr in
Berfa çeleyê

Çilo mi gotî
Bi kêfa mi re yê
Singê te bexçê gula
Navê min tê de yê.

Singê te gewrê
Bi qifl û mifteyê
Weleh tu hatî
Bileh tu hatî
Tu wek kewek rebat î
Tu wek sêvek xelat î
Ser çav mi'r hatî.

## ÇEÇANÊ

Ax û yeman Çeçanê
Sor gulê beliban î
Çavşîn î çavşeytan î
Destê xwe b' destê mi ko
Heyde ko em herine govendê
L'wê d' emê bêne dîlanê
Tu bi serê ciwanî bigirî
Emê l' dev xin gem û liwanê.

Ax û yaman çeçiko
Ava gerê hêniko
Devê xwe di memkê mi ko
Weke ava şerbik e
Xwêdê mirada bike

Ax û yeman çeçiko
Ava gerê hêniko
Devê di memkê mi ko
Weke ava şerbik e
Xwedê mirada bike
Li nav tirikê roniko.

Ax û yeman çeçanê
Çeçan mi dî bû li gasînê
Av dikişandê b' misînê
Ezê Çeço birevînim
Xwe ba'vên Bekrî axa
Li wê Xopana Rêsînê.

Ax û yeman Çeçanê
Çavşînê çavşeytanê
Mi Çeçan dî bû l' ser bîrê
Av dikişandê bi zencîrê
Ezê çeço birevînim
Xwe bavejin Cezîrê.

Kirasê Çeço meles e
Mi da bû ber meqes e
Heçî dosta wî tu ne
Kêçik lawê teres e.

Kirasê çeço mebrûm e
Hûrik, hûrik didrûme
Heçî dosta wî tu ne
J' her du dinya mehrûm e.

IMP. LE MIROIR D'ORIENT - BEYROUTH

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## SOVYETISTANÊ — ENIYA ROHELÊT




### Erdên Ko Uris û Eleman Têde Şer Dikin

Di enişka vê xerîtê a jêrin de, li aliyê çepê, çargûşeke direjkî û têde işaretin hene. Işareta pêşîn çiyan, a diwemîn çem û robaran, a sewemîn pengav û avrazan, a çaremîn rêhesinan û a pêncemîn derên ko ordiya her du aliyan pêşberê hev de ne, şanî me dikin.

Cihên reş behr in, û pirsên tê de navê benderan e.

## Generalekî Talyanî Dardû Ezabên Welatê Xwe Qise Dike

LONDRE—A.F.I. Generalê talyanî Aşil di Davet yê ko di Sicilyayê de hatiye hêsîr kirin gotiye: Dilê me gelek teng bûye ko gava Hevalbenda dest bi êrîşa Sicilyayê kirine Musolînî Stola talyanî ne şiyandiye pêşiya wan, bervaniya Sicilyayê. Ji aliyê din sûçê refên elemanî mezin e, wan diviya bû pêşbiriya qiwetên hevalbenda bikin. Me bawer ne dikir ko Serdariya Hevalbenda heyveronê de dikare direjî girava me bike. Lê bi derbekê her tişt guheriye. Balafirên me ên nobetdarî û dîdevaniyê di sariya sibehê de elam dane ko bi hezaran waporên Hevalbenda esker û çek û posat dertînin peravên Sicilyayê. Me seh kir ko rewişa me giran û zehmet e. Me tiştên ko diqewimîn şanî Romayê daye; lê wey li me, dengê Romayê ne dihat bihistin.

Sal 1. — Hejmar 14

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Duşemb 2 Tebax 1943

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

DESTPÊKA DAWIYÊ

### Sicilyayê Musolînî Kuştiye

Mirovê ko bawer dikir neviyê kişwerkişa û cihangîrê mezin Sezar e, mîna mê'mûrekî adetî, weke katibekî, istîfa xwe daye û ji Qesra Hikûmetê derketiye, vegeriyaye cem jin û zaroyên xwe.

Hitler û Musolînî berî hefteke hev û du dîtine; wilo dixuye ko Musolînî gava halê Hitler dît, sehkir ko hêvî ne maye, leşkerên elemanî nikarin bên gaziya Italyayê; û ji aliyê din Musolînî dizanî bû ko bê arîkariya elemana miletê talyanî ê westa û çavtirşiyandî, bi serê xwe, ni kare barê vî şerî ê giran hilgire. Serek ket erdê, serine din jî wê bikevin. Piçûk bin, mezin bin hikûmetên zalim û zorker pey hev dê bêne pelixandin.

Zalim û zorker cezayê xwe bibînin, û di pêşiya miletên mezlûm û zilmdîtî, miletên bêsûç û beqşkênandî de, dergehê cihana serbestî û azahiyê dê vebe; û destên ko dest bi girtina vî dergehê bikin dê bêne şkênandin. Dema xelasiya cihanê, dema azahî û serbestiya miletan hin bi hin nêzingtir dibe. Ji kortal û nevalên Sovyetistanê, ji pêlên Behra Etlentîkê dengê azahî û serbestiyê tê.

### Frensa Şerevanî

General De Gol qala Frensa Şerevanî kiriye û gotiye: Dijmin di hindurê welatê me de ye, û tê de bi her awayî t'ada xelkê me dike. Qesda me derêxistina dijmina ji welêt e, ko me carekî welatê xwe ji destê dijmina xelas kir û Frensa giha azahî û serbestiyê; hikim wê bikeve destê miletê me; ji bona me armancek heye, xelasiya Welêt, ko ev çêbû, îşê me qediya. ye: êdî miletê me li gora daxwaza xwe karên welêt dê bigerîne.

### Eniya Behra Spî

Di girava Sicilyayê de pêşveçûna leşkerên Hevalbenda dom dike; sêçaryekên erdê vê giravê destê Hevalbenda de ye û Palerm jî hatiye standin. Talyan û elemana nikarî bûn kar û bar û dok û dexpoxaneyên bendera Palermê xira bikin, qiwetên emerîkanî mîna brûskekî ketine hindurê bajêr; û êdî ev bendera hêja, bi kêrî karê Hevalbendan wê bê. Leşkerên hevalbend di Sicilyayê de, heta niha 80.000 hêsîr standine û dora 40,000 eskerên din jî girtine.

Di nav panzde rojan de Sicilye ji qiwet ketiye û Serfermandariya Mihwerê xweş dizane ko xelasiya vê giravê ne maye û yê ko di Sicilyayê deye, ji bona wî vegirtina erdê Talyana îşê wextê ye. Mihwerê digot: Kes nikare pê li axa Ewripayê bike, di nav du heftan de jê perçeyek çûye: û ne perçeke biçûk.

# BI FIROTINA SERBESTIYÊ

## MEZINAHI NA KEVE DEST

### MUSOLÎNÎ KOZEBERÊ QESRA FASISTA QÎMA XWE PÊ NE DIANÎ, KET

LONDRE—R: Radyoa Romayê elam daye: Musolînî istîfa xwe qedimandiye; Kralê Italyayê karberdana Musolînî pejirandiye û bi emrê Kral Mareşal Badogliyo ketiye şûna wî.

LONDRE—R: Bangîna Mareşal Badogliyo: Talyaninol... Bi emrê xudan tac û text Imperatorê me, min karên Dewletê xistine destê xwe. Şer dom dike. Derbine dijwar gihane erdên me ên vegirtî, bajar, şaristan, febrîqe û karxaneyên me; lêbelê em li ser soza xwe ko daye dimînin. Divê miletê me di dora Imperator de kom bibin; yê ko nimînendeyê milet ê jîndar e. Emrê ko min standiye sade û çavser e. Yên ko bawer dikin, dikarin meşa bûyeran bisekinînin û teşxelan çêkin divê bizanin ko bi awakî bêeman dê bêne êşandin. Her bijî Italya... Her bijî Kral.

Bangîna Kralê Italyayê: Talyaninol... Di vê saeta dijwar de ko qedera miletê me tête tayîn kirin, min Serfermandariya hemî qiwetên çek-kirî xistine destê xwe. Her kes divê di cihê xwe de bimîne û wezîfa xwe bike. We divê brînên Welêt ên kûr bînin bîra xwe û bizanin ko Italya saya qidreta Ordiyên xwe de, riya qedera xwe wê peyda bike. Ez îro ji her wextê bêtir, bi we re girêdayî me û baweriya xwe bi serniviştа welatê me ê abadîn tînim:

Her Bijî Italya

STOKHOLM—R: Di nav bira Rome û Stokholmê de axaftina bi telefon hatiye birîn.

LONDRE— Radyoa Romayê weşînekên xwe yên erdên piştbehran sekinandiye.

LONDRE— Piştî ko radyoa Romayê bangînên Kralê talyana û Mareşal Badogliyo weşandine, jê ne mîna berî marşa fesîsta lê marşa talyanî dihate bihistin.

# DANEZANA SOVYETI

### LEŞKERÊN SOVYETÎ BER BI ORELÊ VE DIMEŞIN

MOSKÛ— Serfermandariya sovyetî duhî êvarê danezana jêrîn belav kiriye: Leşkerên me zora dijmina birine û ji nû ve ber bi Orelê ve 4-6 kîlomêtir pêş ve ketine. Di axa Bielgorodê de, qiwetên me berêrîşên dijmina şkênandine û pêş ve ketine; li vê jî eskerên me 6 û heta 9 kîlomêtir pêş ve çûne. Di eniya nîroyî de, der axa Donetzê, li nîroyê Izyumê û nîro-roavayê Voroşilovgradê qiwetên me çeper û penahên xwe selihandine. Di nîro-roavayê Krasnodarê de jî leşkerên me rewîşa xwe edilandine. Li 28-ê tîrmehê qiwetên me 92 tangên elemanî xirakirine. Dîsa li wê rojê 110 balafirên elemanî di şeren hewayî de an bi derbên topên me ên balafirşiken hatine xira kirin.

# Di Girava Sicilyayê De

### Şerîne Zor û Xwîndar Dom Dikin

CEZAYIR—R: Qerargeha Hevalbenda a Mezin li Efrîqa Bakurî elam dide: Di nîroyê Katanê de şerekî zor û xwîndar dom dike. Her çend jî dijmina bi xurtî dikirin pê bidin erdê, pêşveçûna leşkerên kenadî dom kiriye. Lekên şerevaniyên emerîkanî pêş ve çûne û şaristana Palermê vegirtine. Bombeavêjên Hevalbenda gemî û felûqeyên şet û robarên talyanî bi xurtî bombardiman kirine, û di hêla Fogiyo û Batapagliyayê de xesarine dijwar gihandine hêjagehan. Refên Hevalbenda jê pê ve direjî Salerno û balafirgeha Kapodişinoyê kirine û 7 balafirên dijmin avêtine erdê. Ji aliyê din 40 bombeavêjên hevalbend di erdê Sicilyayê de li qefleyên dijmina xistine û di şerên hewayî de 16 balafirên Mihwerê anîne xwar. Ji wan êrîş û tevdanên he 6 mekîneyên hevalbend venegeriyane warên xwe.

LONDRE— D.N.B. dide zanîn ko qiwetên brîtanî xeta elemana a bervaniyê ya roavayê deşta Katanê neqeb kirine.

### Êrîşa Ordiya Sor

Dûhî êvarê, pisporê Radyoa Elemanî ê eskerî General Ditmar digot: Leşkerên rûsî hêj bêtir zora xwe dane Orelê û di qadên din de jî êrîşên rûsî xurtir bûne. Ber bi dawiya zivistana borî elemana di got, vê havînê emê bi çekên xwe ên nû û nûjên û bi tangên xwe yên giran «Piling» ve — ko tangên dinyayê ên çêtir û girantir jî nikarin berberiya wan bikin—bikevin qada şerî û bihna Ûrisa biçikînin.

Rast e ko elemana mîna berî bi mêranî şer kirine lê çi feyde; herwekî nivîsevanê rûsî Ehrenburg gotiye: Xurtiya me ne ev e ko eleman çavtirsiyandî bûne, lêbelê niho Ordiya Sor ji berî çêtir şer dike; Stalîngrad, Orel, Bielgorod, Krasnador şahidên vê gotinê ne.

Ji xwe ji bona elemana hero hêj bêtir esker û xebatker divêtin, û ji bêsiûdiya elemana, esker û xebatkerên wan hero hindiktir dibin.

### Bombardimanên Hewayî

Refên Hevalbenda westa bûn çi ye nizanin; li Ewripayê, li Asyayê û li Pesîfîkê bombardimanên hêjagehên Mihwerê dom dikin.

Talyan û elemana bi hêncêta bombardimana hêjagehên Romayê ên eskerî zehf qîr kirine. Serekcimhûr Rûzwelt li wan vegerandiye û gotiye: Refên Mihwerê di Ingilistanê de 4.000 ibadetgeh xira kirine, ma gava refên elemanî li wan ibadetgehan dixistin çire Xwedê ne dihat bîra we? Ji xwe balafirên emerîkanî beriya ko rêhisin û stasyonên Romayê bidin ber bomban, bangîn avêtine û pê ji xelkê Romayê re elam dane ko Rome wê bête bombardiman kirin û rûniştinanên bajêr divê xwe bidin alîkî û bikevin serdabên çanparêz.

### Felek Li Mihwerê Geriyaye

LONDRE— Serekdewletên Hevalbenda yên ko di Londrê de ne bi tevayî dibêjin: ketina Musolînî destpêka dawiyê ye: û ne bitenê ji bona talyana, lêbelê ji bona elemana jî. Sermiyanê Çekoslovakyayê M. Benes gotiye: Çûna Musolînî dema aştiyê ji bona talyana nêzingtir kiriye: talyan dixwazin bi şertine baş çekê xwe deynin, lê di dawiyê de, bê qeyd û şert xwe bavêjin bextê Hevalbenda. Serekwezîrê polonî gotiye: Ev destpêka derbine xurt in ko di bin giraniya wan de Dîktator hemî dê bipelixin. Wezîrê Yugoslavyayê ê dervekariyê gotiye: Piştî çûna Musolînî ji bona talyana şer kirin, bê eqlî ye; û dikare bête gotin ko ji bona wan şer kirin wê bibe bê imkan.

### BER BI ORELÊ VE!

#### Ordiya Sor Êrîşên Xwe Pêş Ve Dajo

MOSKÛ— Serfermandariya sovyetî duhî êvarê elam dida ko leşkerên rûsî ber bi Orelê ve, ji nûve 6 û heta 10 kîlomêtir pêş ve çûne.

Êrîşên elemanî ên vê havînê 13 roj dom kirine. Di nav wan rojan de 70.000 eskerên elemanî hatine kuştin; û qiwetên sovyetî 2.900 tang, 195 topên motorkirî, 844 topên adetî, 1392 balafir û 5.000 kamyonên elemanî xira kirine.

### BOMBARDIMANA HAMBURGÊ A XURT

2.300 TON BOMBE HATINE AVÊTIN

LONDRE—R: Wezareta brîtanî a hewayî dide zanîn: Şevêdî refên me bi ser erdê Germanistanê de girtine û şaristan û bendera elemanî a mezin, Hamburg bombardiman kirine, û 2.300 ton bombe avêtine destgehnoqavên elemanî ên mezin yên vî bajarî. 14 bombeavêjên me venegeriyane qerargehên xwe.

# DEMA NIHA

## BOMBARDIMANA PLOESTIYÊ

### Kaniyên Romanyayê Ên Gazê Hatine Bombardiman Kirin

QAHIRE— 170 bombeavêjên emerîkanî duhî piştî nîro ji qerargehên erdê Rohelatê Navîn bi hewa ketine, bi ser erdê Romanyayê de girtine û di nav deqîqakê de ji 150-î mêtir bilindahiyê 300 ton bombeavêtine kaniyên gazê yên bajarê rûmanî Ploestiyê. Ji wê gazê elemana li salê 11.000.000 ton banzîn derdixistin, sêyekê hemî banzînên elemanî.

MELBURN—Qerargeha Hevalbenda a mezin ya Pesifîka nîro-roavay elam dide: leşkerên Hevalbenda ji nû ve, ber bi Mundayê ve pêş ve ketine

CEZAYIR— Komîta xelasiya Welêt duhî civanek danî; civanî sê saet û nîv dom kiriye. General De Gol sermiyanîtî dikir.

CEZAYIR— Bi awakî resmî didin zanîn: Wezîrê emerîkanî ê şerî Mister Henrî Stîmson hatiye Efrîqa Bekurî.

CEZAYIR— Heta niha qiwetên Hevalbenda di Sicilyayê de 85.000 leşkerên talyan û elemanî hêsîr girtine.

CEZAYIR— Serfermandariya elemanî lez û bez esker dişîne Sicilyayê; her wekî qiwetên emerîkanî, brîtanî u kenadî hin bi hin dora çeper û penahên elemana digirin, berberiya dijmina xurtir dibe; duhî firqeya elemanî a zirhkirî 25 dirêjî qiwetên kenadî kiriye, yên ko ber bi bakur-rohelatî ve, pêş ve diçin, cehda elemana tu ber ne daye. Pêşmêrên leşkerên emerîkanî jî, gihane eniya şerî a bakurî û li wê dirêjî talyan û elemana kirine.

LONDRE— Nûçegihayê ejensa Royterî elam dide: peyayên ko ji Italyayê hatine dibêjin: leşkerên elemanî bi piranî derbazî sînorên Brenerê dibin û dikevin erdê talyana

ROME— Radyoa Romayê şevêdî digot: Fasîzim hatiye rakirin. ji ber ko pê êdî pişta miletê talyanî xurt ne dibû, di wextê şerî de fasîzim hatiye hilanîn, ji ber ko şerî şanî milet kiriye ko fasîzim nikarî bû bi hemî qiwetên welêt emel bike. Milet yekdev gotina Mareşal Badogliyo ducar dike; şer dom dike; şer dom dike û milet peyayên ko manî dom krina şerî dibûn qewirandine.

## GOTARA SEREKWEZIR ÇORÇIL

### DI PÊŞIYA CIVATMILETÊ BRÎTANÎ DE

LONDRE—R: Kozîbirê qesra fasîsta Musolînî, ketiye û ew qesir bi xwe wextekî nîzing de wê xira bibe. Bê şik gohastinine mezin wê çêbibin, lê dawiya wê hejanê gelo çawan bibe, hêj zû ye ko mirov bizane. Italya ji bona siyaseta Musolînî bihayekî giran daniye. Leşkerên Hevalbenda di erdê wê de ne û dikarin talyana ji vî şerî xelas bikin, dikarin wan bigihînin serbestiyê û ji wî miletî re, di nav bira miletên Ewripayê de, cihekî bi qedir û rûmet bidin. Italyana bixwe divê bibijêrin. Heke qerar dane û ketine pey elemana qiwetên Hevalbenda ji bakur û nîroyî, ji rohelat û roavayî, ji her derê, û bi her texlît çek û posatan dirêjî wan bikin. Emrên ko hatine dayîn serdar û serfermandarên Hevalbenda ev in; erdê Italyayê hemî wê bête xira kirin.

Heta niha Hikûmeta Talyanî li deriyê me ne xistiye ko barana bombe û pola, gulle û agirê ko dikevin erdê talyana bisekine. Em hêj nizanin heke xelkê Italyayê bi tevayî wê bixwazin ev şer bisekine an bi tenê jê birek di vê qesdê de ye. Di dora Germanistanê de, dinya dibe tarî, hêviya ko elemana danî bûn noqavan, ji noqavên wan zûtir bin av bûye. Di eniya rûsî de elemana xesarine giran û mezin dîtine; û di welatê xwe de çi dibînin: bajarên wan pey hev dibin xwelî û xerabezar. Ji aliyê din xelkê erdên ko destê elemana de ne, hero, hêj bêtir berberî û neyartiya elemana dikin.

## Peyiva Serekcimhûr RUZWELT

### Leşkerên Me Ber Bi Berlîn û Tokyoyê Ve Dimeşin

NÛ-YORK— Ev in hevokên bingehîn yên gotara Serekcimhûr Mr. Rûzwelt: Berî sal û nîvek min got: Leşkerperestên Berlîn, Rome û Tokyoyê dest bi vî şerî kirine û ev şer bi qiweta miletên serbest û bi serfiraziya wan wê biqede. Ev gotina min rast derdikeve. Qiwetên Hevalbenda di eniya rûsî, pesifikî û ewripayî de pêş ve diçin û ber bi Berlîn û Tokyoyê ve dimeşin. Hitler bêbextî li Musolînî kiriye, ne hatiye hawara wî, û pê Musolînî ketiye. Hemî sûçdar Italya, Eleman û Japona bê qeyd û şert divê, xwe bavêjin bextê me. Bi vegirtina erdê wan emê miletan ji zilm û zorkeriyê xelas bikin û wan bigihînin azahî û serbestiyê Bê şik ji bona şkênandina wan wext divêtin. Iro qiwetên me ên behrî ji her wextî xurtir in. Isal destgehên me 19 milyon ton wapora çêdikin; sala ko bê, ew 21 milyon ton çêkin. Ev şer kengê wê biqedekes nikare bibêje; şer bi xeyret û xebata me wê biqede. Tiştên ko em dixwazin, çêdibin, her wekî ketina Musolînî; ev tişt di riya me de gaveke mezin e, ên mayin Hitler û Tojo û şirikên wan jî dê bikevin. Me dest bi şerî kiriye, beriya ko zefer bikeve destê me, em êdî dev jê bernadin

LONDRE— Radyoa Romayê duhî êvarê elam dida: Serbest berdana girtiyên siyasî destpê kiriye. Kral emrê rakirina zehf wâliyên talyanî mor kiriye. Civata Fasîsta hatiye hilanîn; û ji bona parastina selametiyê hin lebatên civatê hatine girtin.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## TEVDANA QIWETÊN HEVALBENDA



Balafireke Torpîlavêj ji Tîpê mezintir.



Stolên Hevalbenda Behrên Dinyayê Ji Noqava Paqij Dikin; Topa Cengkeştiyekê.



Waporên Hevalbenda Ên Barkêş Bê Etlahî Tang û Çek û Posat Tînin Girava Sicilyayê.

## SICILYE ÇAWAN HATIYE VEGIRTIN

### Gotara Serekcimhûr Mister Rûzwelt

«Sê hezar wapora 160.000 esker—emerîkanî, ingilîzî, kenadî û frensizî—14.000 girgirokên motorkirî, kamyon, otomobîl û motosikil, 600 tang, 1.800 top derêxistine erdê Sicilyayê. Piştî ko leşkerên Hevalbenda pê li vê erdê kirine, wapora hêj bêtir qiwet anîne vê giravê.»

LONDRE—R: Ejensa elemanî D.N.B. duhî êvarê elam dida ko leşkerên Mihwerê xwe ji bajarên Palermo, Marsala û Trapaniyê bi şûnda kişandine.

BERLÎN— Pisporê Radyoa Elemanî ê eskerî, duhî êvarê digot: Qiwetên rûsî bi xurtî zora xwe didin çeper û penahên me yên eniya Orelê; rewişa eskerên elemanî di bakur, rohelat û nîroyê Orelê de zehmet e.

CEZAYIR— Hevalbenda fermandarê qerargeha Avgustayê a behrî Emîral Leonardî hêsîr girtine.

IMP. LE MIROIR DORIENT BEYROUTH

Sal 1 — Hejmar 16

Duşemb 16 Tebax 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

CENG & SIYASET

## DEWRAN

### Di Destpêka Biharê De

Serekwezîr Mr. Çorçil, di destpêka biharê de goti bû: beriya ko pehîz bê û pelên daran biweşin, şerine zor dê çêbibin. Gotina Serekwezîr rast derket û di Behra Spî de, şerino no çêbûne. Delêletin hene, û mirov dikare bawer bike ko di wextekî nîzing de, li dereke din jî, tiştek dê biqewime, her wekî hevalbendên me Ûris minêkar in, û pê xewa sermiyanên Mihwerê direve. Lêbelê hêj kes nikare bibêje, ew tişt, kengê, çawan û li kû wê biqewime. Gelek wext ne boriye ko hatina yekîneyine emerîkanî û kenadî ên xurt û qenc talîmdîtî, axa Britanya-Mezin, dihate elam dan. Ji aliyê din refine emerîkanî ji nû ve di Ingilistanê de war girtine û lê hêjmarên balafirgehan hatine zêdetir kirin. Ji aliyê dîtir çûn û hatina trênan li erdê Brîtanya-Mezin, gihaye dereca ko bi dema etlahî û çûna xelkê bihingeh û zozanan naye tefsîr kirin. Jê pê ve têtê bihîstin ko zabitên bilindpaye, ji eniyên şerî ên din, hatine Londrê.

Wilo dixuye ko di hin derên Brîtanyayê de, hikûmet destê xwe datîne ser dibistan û avahiyên mezin, her wekî di erdê Galê de jî çêbûye. Bi Sveçistanê re, çûn û hatina balafiran hatiye birîn, ji bona sebebên ewleyiyê. Heçî Sveçistan, wexteke minasib de, ji REYIX re da zanîn ko esker û çek û posatên elemanan êdî nikarin di erdê Sveçistanê re biborin, û eleman bivê nevê pê qail bûne.

### Dema Êrişên Mezin Hatiye

Dema tevdanine eskerî ên mezin hatiye. Wextekî nîzing de îşê bênderan û hilanîna zad û zexiran jî wê biqede; û şertên hewayî hêj bêtir bikêrî karên leşkerî ên giran wê bên. Bê şik ji wan delêletên he tiştek xwe hilavêjê, lê ji kîjan aliyê ve ne nas e; ji rohelatî roavayî an nîroyî.....

Her cihên xeta elemanî a berevaniyê, ji Pozê Bakurî û heta Delava Biskayayê, — eleman jê re kembera Ewripayê a pola dibêjin— dikare bibe armanca derbeke Hevalbenda,

### Civanê Çorçil–Rûzwelt

Ji çûna Serekwezîr Çorçil Kenadayê, cihar dibe ko qesd û planên Hevalbenda, ji hisab û texmînan zûtir cih girtine.

Vegertina Sicilyayê ji niqta eskerî, ji awayê ko dihate bawer kirin dê çêbibe, siviktir pêk hatiye, û ev bi rijandina xwîneke hindik ketiye rê: bi vê derbê Musolînî jî çûye, beriya wexta ko dihate bawer kirin ko ev tişt wê biqewime,

Niho Hevalbenda, di pêşiya bûyerên nû de, divê xwe zû bilivînin û deriyê êrişan firehtir bikin,

# SERSALA MEZIN

# RONAHIYA XELASÎ & SERBESTIYA MILETAN

## SEREKCIMHÛR ROZWELT û SEREKWEZÎR ÇORÇIL DI BEHRA ETLANTÎKÊ DE, LI ZIREHPÛŞEKE MEZIN, GIHANE HEV û EV ŞERT DANINE

Frense, Brîtanya Mezin, Emerîka û zehf dewletên dinyayê ên din, girêdaniya xwe bi wan şertan elam dane.

Bi hênceta sersala Şertê Etlentîkê ê diwemîn, Cenabê M. Helleu, Nimînendeyê Frensê ê Mezin, Cenabê General Spears, Sefîrê Brîtanya Mezin û Kardarê emerîkanî ê diplomasî Cenabê Mr. Wadsworth, roja şembê, 14-ê tebaxê, bi bangînine hêja qedrê Sersala Şertê Etlentîkê girtine, û binavê hikûmetên xwe ji xelkê cihanê re elam dane ko şertên Etlentîkê Armanca Hevalbenda ye, û armanca fedakariyine mezin, ko hemî miletên dinyayê, piçûk bin mezin bin kirine û îro jî dikin û sibe jî wê bikin.

### Şertê Etlentîkê

Bi çend pirsan bingehên ko di şertê Etlentîkê de hatine danîn ev in: 1.) Qesda Emerîka û Brîtaniya Mezin, ji vî şerî ne ev e ko erd û kişwerên xwe mezintir bikin.

Mana vê asasê ev e ko Emerîka û Ingilistanê ji bona serbestiya cihanê ev şer kirine û çavê xwe ber ne dane erdê miletên din.

2.) Bê qailiya miletan, dewletên hanî na xwazin sînorên welatan bêne gohartin. Ango tu milet na be ko bikeve destê miletekî din meger ko ev milet bixwe vî tiştî bixwaze.

3.) Miletên dinyayê hemî divê li gora dil û daxwazên xwe hikûmeta xwe bibijêrin. Ev asas heqê azahî û serbestiya hemî miletan nas dike, û nas dike ko miletên cihanê di neqandina hikûmeta xwe de serbest in; û na be ko zor li wan bête kirin.

4—5.) Bendên çar û pênc im dergehê ticareta dinyayê ji hemî miletan re vedike û tevkariya wan dixwaze.

6.) Xelkên cihanê tev da, divê di erd û malên xwe de bêtirs û bi rahetî rûnin, û ne kevin zîvariye.

7.) Divêt mirov bikarin bi serbestî li behrên Dinyayê derbas bibin.

8.) Divê milet tev de, dev ji zorkerî û ta'dayiyê berdin, û yên ko pê emel kirine, divêt bêne ji çek kirin.

# CIVANA ÇORÇIL - RUZWELT

## Hevalbend Derbên Xwe ên Dawîn pêk tînin

Weşington— R: Serekcimhûr Rûzwelt û Mister Çorçil civanek danîne û Sermiyanên emerîkanî û brîtanî ketine vî civanî.

LONDRE—A.F.I. Hawîrên emerîkanî ên maldariyê hin bi hin, hêj bêtir qanî in ko şer ber bi xelaseka xwe ve diçe; kirîn û firotin di bazara Wol-Strîtê de zehf kêm e.

# BER BI BRIANSK & XARKOVÊ VE

## Ordiya Sor Mifteyên Van bajara Xistine Destê Xwe

LONDRE—A.F.I. Leşkerên sovyetî ber bi Briansk û Xarkovê ve gelek pêş ve çûne; û ji erdê Donetzê wêdetir gihane cihê ko 12 kîlomêtir bakur—rohelatê Xarkovê de ye, li roavayî, Ûrisa rêhesina Xarkov—Poltavayê vegertine, û di roavayê Xarkovê de, Ordiya Sor ji Poltavayê bi tenê 60 kîlomêtir dûr e. Ji bona ko xurtiya êrîşên rûsî xweş bêne seh kirin, divê mirov bîne pêş çavê xwe ko zivistana çûyî jî Ordiya Sor hêjabûna xwe û şehrezayiya serdariya xwe, bi awakî hinde eşkere ne xisti bû pêş çavê Cihanê. Duhî refên sovyetî bi ser Xarkovê de girtine û stasyonên vê şaristanê bombardiman kirine. Berî deh roja Ûrisa Orel û Bielgorod vegirtine û di nav wan 10 rojan de wan eleman di deştên Ukranyayê de, 100 kîlomêtir paş ve zivirandine. Radyoa Moskovayê elam dide ko gava eleman xwe bi şûnda dikişînin, xelkê gund u bajara jî bi zor bi xwe re dibin.

### Pirsa Talyanî

Di Londrê de, têtê bawer kirin, ko rewişa Italyayê a hindurî û siyasî êdî bûyerek ji giraniya diwemîn e, û di civanê Rûzwelt-Çorçil de, berî her tiştî, li ser pirsên şer û êrîşan dê bête axaftin,

Qesda Badogliyoyî û hisabên di wî — bi pêdana erdê di eniyên şerî de wextkarkirin û pê bi şertên çêtir dest ji şerî kişandin — tu qencî nayêne Italyayê. Qerara Hevalbenda li ser pirsa talyanî, hêj qaimtir bûye û vêna Hevalbenda mîna berî, û niho ji berî bêtir, ev e: Italyayê divê bê axaftin û bazar xwe bavêje bextê Hevalbenda.

### Stêra Ordiya Sor

Piştî Orel û Bielgorodê, Ordiya Sor gihaye dergehên Briansk û Xarkovê, Mehên havînê; dema êrîşa elemanî bû, Ordiya Sor ev havîn kiriye dewra serfiraziyên xwe,

### Şerê Pesifîkê

Pev hey girav, bender, war û qerargehên ko berî salekê keti bûn bin hikmê Japona, yek bi yek ji destê wan têne standin. Êrîşa qiwetên Hevalbenda li wê hêla dinyayê, pêş ve diçe û li gora nûçeyên dawîn, deryavanên emerîkanî yên çekhilgir, di girova Nû-Ceorciyê de—giravek ji yên komgirava Silêmanê—dora qerargeha japona Baisokoyê girtine û eskerên tê de safî dikin, û pê destê japona ji vê giravê yekcar qut dibe. Di nav deh rojên şerê giravên Silêmanî ên pêşîn de, refên emerîkanî û topên balafirşiken 119 mekîneyên japonî anîne xwar, ji emerîkaniya 34 heb çûne.

Di axa Birmanyayê de jî, refên emerîkanî xesarine dijwar gihandine hêjagehên Akyabê, yê ko li ser riya Arakan—Mandalayê de ye.

### ÇEKÊ EMERÎKANÎ Ê HEWAYÎ

2,000.000 BALAFIRVAN 100.000 ÊRÎŞ

WEŞINGTON— Serdarê çekên Emerîkanî ên Hewayî General Arnold, bi hênceta sersela danîna Balafirvaniya Emerîkanî a sih û şeşemîn peyiviye û gotiye: Di nav heft mehên vê salê ên pêşîn de, refên me 100.000 car di ser erdên dijminan re firiyane û li hêjagehan xistine û ev delîlî xurtiya 2.000.000 balafirvanên me ye. Tarîxa cihanê di ser erdên Kiska, Rabûl, Çîn û Maçîn û Germanistanê re têtê nivîsandin û dê bête nivîsandin. Me pişta refên dijmina şkênandiye û bi vî awayî deriyên Ewripayê di pêşiya Ordiyên me de vebûne. Niho em bi destdaniya refên brîtanî jî, bajarên elemanan hildiweşînin û pê derba xwe a dawîn hazir dikin Gêneral Lewîs Brereton, fermandarê komerefa 9, ya ko di welatên Rohelatê Navîn de qerargeh girtiye gotiye: refên vê komê pey hev 113 car êrîşî hêjagehên Mihwerê kirine, 16.000 ton bombe avêtine wan hêjagehan û ji 500 î bêtir balafir xira kirine; 56 wapor xeriqandine û zerer gihandine 99 gemiyên din.

NÛ-YORK — Qiweteke emerîkanî a behrî ya ko piştî vegirtina Sicîlyayê, vegeriyaye Emerîkayê, 5.000 hêsîr ji yên ko leşkerên emerîkanî di Sicîlyayê de girtine, anîne welêt.

### Derba Balafiran

WEŞINGTON— Meha borî refên emerîkanî û brîtanî 21.500 ton bombe avêtine hêjagehên erdê Germanistanê; balafirvanên emerîkanî 500 û brîtanî 129 mekîneyên dijmin anîne xwar. Wezareta emerîkanî a şerî dide zanîn ko karxaneyên emerîkanî her meh 7.000 balafira çêdikin, febrîqeyên Mihwerê hemî bi hev re 4.000.

Her meh eleman 2.200; Japon 1.200; Italya 600 balafira çêdikin; lêbelê karxaneyên Britanya-Mezin û Sovyetistanê her meh ji yên febrîqeyên Mihwerê bêtir balafira teslîmî ordiyên xwe dikin,

# DEMA NIHA

## GOTARA Mr. RoZWELT

### HER MILET XWEDIYÊ QEDERA XWE YE

WESINGTON— Bi hênceta Sersala Şertê Etlentîkê ê diwemîn, Serekcimhûr Rûzwelt axaftiye û gotiye: Hevalbendan qerara xwe dane û ne bitenê zora Eleman, Talyan û Japona, lêbelê hemî qiwetên ko şer û berberiya azahî û serbestiya miletan dikin, bibin, û pişta zalim û zorkeran bişkînînin. Gava Şertê Etlentîkê dihate mor kirin, kes bawer ne dikir ko miletên dinyayê bi serbestî wê bikarin qerara qedera xwe bidin û bêjin bi çi awayî dixwazin karên welatê xwe bigerînin.

Lê îro azahî û serbestiya miletan bûye tiştekî heq rast û bêşik.

MELBURN—R: Bi awakî resmî didin zanîn: Qerargeha Japonî Salamaua—erdê Nû—Gineyê—bi awakî heta niha ne dîtî, hatiye bombardiman kirin; refên emerîkanî di nav 45 deqîqan de 177 ton bombe avêtine vê qerargehê. Jê pê ve bombeavêjên emerikanî Liberators, li balafirgeha Japona a Kahiliyê xistine û li erdê 32 mekîneyên japonî pelixandine.

MOSKÛ—R: Leşkerên Sovyetî Karaçev vegirtiye.

# CENGÊ SICILYAYÊ

### Ber Bi Xelaseka Xxe Ve Diçe

CEZAYIR—R: Leşkerên Hevalbenda çiyayê Etnayê bi timamî vegirtiye. Piştmêrên dijmina hêj şerî me dikin, û pê dixwazin wext bidin, Yekîneyên xwe, da ko ew xwe bigihînin dora tengava Mesinayê û jê, pê li axa khergirava Îtalyayê bikin. Bişundaçûna lêşkerên elemanî bi rêz û tevger dom dike, lê yekîneyên hevalbenda ji wan zûtir pêş vê tên.

CEZAYIR— Mesîne hatiye vegirtin; Sicilya bi temamî ketiye destê Hevalbendan.

# KEZEBA SEMASIYAN

## BINAHIYA BALAFIRVANA XURT DIKE

Heta niha kes ji semasiyan hez ne dikir, goştê wan bêtam e, girtina wan zehmet e, û herwekî semasiyên mezin direjî melevanan û belaketiyên behrê dikin, navê wan bi neçeyiyê derketiye.

Lê piştî dest pêka vî şerî hatiye zanîn ko kezeba semasiyan de«Vîtamîn A» heye û pê çavên însanan xurt dibin. Di şerî de xurtbûna çavê eskeran tiştekî zehf hêja ye; yê ko zû dijminê xwe dibîne, derba pêşîn yê wî ye. Ancax kezebên semasiyên dinyayê têrî milyonan eskeran na-ke ji ber vê yekê, kezeba semasiyan didin balafirvanan; yên ko bi serîkî dirêjî hêjagehan dikin û hewcedarî çavine xurt in. Bombeya ko ne ketiye hêjagehê, dilê xelkê ditirsîne lê karê şerî pêş ve najo. Nemaze balafirvanên mekîneyên ko bi serîkî dirêjî armancan dikin piştî ko ji 2—3000 mêtir bilindahiyê, xwe berdidin ser serê Armancê, gava dema rastkirina mekînê û lêxistinê tê, 2-3 saniyan dora xwe nabînin û bi adet û hînbûna destan, balafira xwe dajon û dirêjî armancê dikin û gelek caran jî derb cihê xwe nagire. Lê îro bi xwarina «Vîtamîn ; A» ya ko di kêzeba semasiyan de hene, çavê balafirvana ecêb xurt dibe, êdî gêj na bin û di demên tengî û zehmetê de jî ew dora xwe qenc dibînin. Semasî nemaze di behrên Efrîqa Nîroyî de,li dora pozê Kap, û di delavên peravên di wê de zehf in. Masîvan her hefte ji wan400—500 û heta 800 hebî digirin,

Dirêjahiya semasiyekî adetî mêtir û nîv û heta du mêtira ye, giraniya wî 25 û heta 30 kilo ye. Kezeba semasiyekî kîloyek û heta kîloyek û nîv; û carina heta 4 kîlo ye. Semasiyên mezin, yên mirovxwar 4 mêtir dirêj in.

Semasî xwarin- neqîn e, û ji her texlît masiyan hez na ke; ew minêkarî xwarina şerdelyayî ye.

## Strana Kurdî

### Hey Lo Mîro

Hey lo Mîro, Hey lo Mîro
Te ser xweşo
Imdad û meded gelek dûro...
Fîncan giro, qehwe tîro...

Yadê rebenê... Şevê çûnê
Çi qewimî û çi ciriya
Li mala Ilyasê Hemzo
Civateke mezin digeriya
Şewir û mişêwirê giran
Li mala Ilyasê Hemzo didaniya

Saet şeşê rojê min xiyal,
Û bala xwe dayê
Di nav bira Tehta Sor
Û Tehta Girmo de,
Sê kemînê giran
Li pêşiya mîrê min danîne...
Û rûniştine, û bi sê ciyan
Mi dî xweş tê dengê çapliyan;
Qîştînê fedawiyan...

Saet şeşê rojê û pê ve
Mi dî êrîş bûne
Ser cendekê Mîrê min,
Bi darê çapliyan.

## Sînemê

Ey lê Sînemê, dilê min li dîn e
Sed carî dilê min li dîn e,
Bajarê Misrê, bajarekî pir î mezin,
Î giran e, mitîn e,
Heftsed hezar melê di bajarê Misrê de, berî xwe dan kitêb û Quran û Yasînê,
Te nav Mîr Mehmûd, lawê Melikê Misrê, kir elem û xwîn e.
Teresê melê cewab li ser cewabê, ji Mîr mehmûd, lawê Melekê Misrê re Rêka heca şerîf dişîne
Bi lewnkî digot; dostê Sînemê esker û romî ne, û bi lewnkî jî digot Z'aran û henefî ne.
Sînemê digot; O lo pismamo... dilê min li dîn e, sed carî li dîn e...
Bajarê Misrê bajarekî pir î mezin û giran û mitîn e.
Heftsed hezar melê, di bajarê Misrê de
Berê xwe dane ayat û kitêb û Quran û Yasînê.
Tu wilo ji Xwedê bawer bike
Tiştê ko tu dibêjî
Li dor dotmama te de tu nîne
Her binêr qoda nav guhê melê
Tasa hemamê bihûst û çar tilî ne
Lê dilê, Mîr Mehmûd, êdî lê venabe.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

### Ji dîroka Frensê Rûpelên Zêrîn



Leşkerên Frensizî Piştî Ko Di Bîr-el-Hakîmê De, Mîna Şêra Şerî Dijmina Kiribûn, Di Takrûnayê De Bi Çavsorî û Hinerweriya Xwe Karine Mezin û Dastanwer Pêk Anîne, Geliltangekî Frensizî Berê Xwe Daye Dijmina û Pêş Ve Dikeve.



Deh Hezar Eskerên Frensiz 25.000 Hêsir Girtine; Çek û Posat û Zad û Zexîreyên Dijmina Zehf Bû, Lê Çi feyde.....



Di Eniya Pasifîkê De Zora Japona Diçe; Eskerên Hevalbenda Berê Xwe Dane Japona Li Avekê Derbaz Dibin.

# URISA BERÊ XWE DAYE SMOLENSKÊ

## ORDIYA SOR BER BI SMOLENSKÊ VE DIMEŞE

LONDRE— Qiwetên sovyetî, bê ko eleman bikarin pêşiya wan bigirin, mîna berfendekê ber bi roavayî ve pêş ve diçin. Dirêjahiya eniya rûsî, ya ko pêş ve dikeve 575 kîlomêtir e.

Yekîneyine sovyetî ên mezin, gihane erdê ko ji Smolenskê bi tenê 130 kîlomêtir dûr e. Di hêla Brianskê de, Ûris ji Karaçevê wêdetir çûne. Li gora hin telegrafan, di kûçe û kolanên Xarkovê de şer çêdibe.

LONDRE— Radyoa Londrê elam dide: Sê serekên şerdariyên brîtanî, General Alan Brûk, Emîral Sir Dudley Poand, Mareşalê çekê hewayî Sir Şarl Portal û Lord Munbaten, serekê tevdanên — bi tevkar ji Mr. Çerçil re hatine Kenadayê.

1ère ANNEE — LUNDI 16 AOUT 1943 — NUMERO 16

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Aprés l'effervescence qui a suivi la disparition de Mussolini, le silence s'est fait cette semaine autour de la situation intérieure de l'Italie. Il semble que la «dictature» militaire de Badoglio ait réussi à neutraliser la violente poussée révolutionnaire des régions industrielle du Nord, peut—être avec l'aide des troupes allemandes dont on avait signalé le passage au Brenner.

«L'Italie continue la guerre» déclarait un bref communiqué de Rome. Ce qui peut se traduire ainsi : L'Allemagne ne nous permet pas de ne pas continuer la guerre. Un pacte d'acier ne peut pas être déchiré par un partenaire, surtout quand l'autre partenaire, le plus fort, a un intérêt vital à le maintenir entier et de très puissants moyens pour le faire respecter.

On annonce même que des troupes allemandes descendent dans le sud de la Péninsule.

En réponse à cette prise de position, les Alliés ont recommencé leurs attaques aériennes. Milan et Turin ont été l'objet des bombardements massifs et quelques heures aprés Rome était bombardée pour la deuxième fois. L'Italie doit comprendre qu'elle laisse actuellement passer la chance qu'elle a de sortir très vite des horreurs de la guerre et d'en sortir avec des conditions relativement honorables. La reprise de l'offensive aerienne la décidera peut—être, et avec elle la libération complète de la Sicile, dont l'occupation de Rendazzo par les troupes américaines représente la menace directe contre Messine.

Du côté des Russes la menace sur Kharkov se précise, en même temps qu'une offensive signalée par le D.N.B. comme étant très puissante. est déclenchée dans le secteur de Smolensk, et que se soutient l'attaque contre Briansk.

Le centre nerveux du Reich Berlin, a reçu, lui aussi, la visite des Mosquitos. Après la destruction de Hambourg et les raids contre les villes industrielles de l'ouest, l'Allemand doit réellement commencer à sentir le souffle de la défaite.

D.

ALGER (A.F.I.) — Radio—Alger annonce que M. André Philip Commissaire à l'Intérieur, a signalé que de nombreux Français résistent dans les montagnes afin d'échapper à la conscription. Il a ajouté que deux cents milles Français parviennent à vivre cachés dans les villes.

LONDRES (R)— D'importantes formations de «Forteresses Volantes» américaines ont attaqué hier soir les aèrodromes de Poix, d'Amiens, de Vitry en Artois, de Lille et de Merveille.

## Les DEPECHES de la NUIT

### RESUME DES NOUVELLES

MEDITERRANEE— L'évacuation de la Sicile se poursuit rapidement. La R.A.F. bombarde une fois de plus le centre industriel de Milan.

RUSSIE:— Les forces soviétiques se sont emparées de la ville de Karatchev à 40 kms. de Briansk.

ACTIVITE AERIENNE:— Patrouilles offensives de la R.A.F. sur la France et la Belgique. L'industrie américaine produit actuellement 87.000 avions par an.

FRONT DU PACIFIQUE:— Violents combats aériens en Nouvelle—Guinée. 48 appareils japonais ont été abattus,

## UNE PETITE NATION: UN ÉTAT MODÈLE

3

*Mais la nation tchécoslovaque n'est pas seulement un peuple d'une grande et noble littérature. Daus le domaine culturel, elle est aussi surtout connue comme une nation fervente de musique. Au XVIIIe siècle, les trésors de la musique populaire tchecoslovaque ont inspiré les musiciens d'autres pays, et plus recemment le monde musical a reconnu dans la musique tchécoslovaque une force nationale douée d'un génie tout particulier. Que le peuple chante tel a été, semble-t-il, le but démocratique que se sont proposés depuis plus d'un siècle les compositeurs tchécoslovaques. Leur art a joué un rôle prépondérant dans la constitution de la nation tchécoslovaque telle qu'elle existe aujourd'hui.*

*Les noms les plus connus y sont ceux de Smetana, de Dvorak /lire : Evorjak/ de Suk /lire: Souk/ et d'un grand nombre d'autres. Deux des grands musiciens tchécoslovaques, le brillant pianiste Firkusny / lire: Firkouchny/ et le compositeur Martinu /lire: Martyinou/ sont actuellement en exil et la Gestapo a interdit l'exécution de certains opéras et morceaux de concert tchécoslovaques, mais les envahisseurs pourraient aussi bien essayer d'endiguer les chutes du Niagara que d'empêcher la musique tchécoslovaque, de galvaniser l'âme nationale du pays, que sa population soit restée dans le pays ou ait pris le chemin de l'exil.*

*La Tchécoslovaquie, et sa capitale, la ville de P r a g u e, sont d'ailleurs la patrie des beaux arts et de l'arehitecture surtout. Le mérite des richesses d'architecture de- Prague distingue cette ville des autres capitales. Les architectes de Prague ont adapté le style rococo à leurs desseins et certaines de leurs réalisations surpassent tout ce qui s'était fait dans le genre. On ne peut d'ailleurs oublier à Prague le style gothique, ni nulle part en Tchécoslovaquie car il est aussi universellement répandu que le style rococo. Depuis l'époque du Xe siècle jusqu'aux temps modernes, on note des tendances locales bien caractérisées. Après mille ans, nous constatons que les architectes tchécoslovaques continuent à adapter les styles architecturaux aux nécessités de leur pays. Au cours des dernières années, ils ont manifesté leurs desseins pratiques dans une architecture de lignes sobres telles qu'on peut en voir des exemples dans les quartiers modernes de Prague et de plusieurs autres villes tchécoslovaques.*

*Le caratère tchécoslovaque en art se manifeste plus ouvertement encore dans les œuvres individuelles des peintres. Ces œuvres s'inspirent en effet de très anciennes traditions, et au XIVe la peinture tchèque jouissait d'une réputation presque aussi brillante que celle des plus fameuses écoles italiennes et flamandes. En ce qui concerne la période moderne, les artistes tchecoslovaques se sont surtout inspirés des artistes français. Malheureusement, les trésors artistiques de Prague ont souffert des vols commis pendant les guerres. La guerre actuelle a aussi donné lieu à de nombreux vols: Hitler a volé les précieuses tapisseries du Palais de Prague, Hradcany /lire : Hradtchany/ et d'autres chefs nazis ont emporté de précieuses œuvres d'art en souvenir de la capitale tchécoslovaque et des châteaux avoisinants.*

### UN PEUPLE D'INVENTEURS

*La science et l'industrie ont toujours marché de pair en Tchécoslovaquie, pays, où, depuis le moyen-age, la technique a progressé d'une façon entièrement nouvelle. C'est en 1468 que parut le premier livre imprimé en tchèque. Prokop Divis / lire : Dyivich/ inventa le paratonnerre bien avant Benjamin Franklin, etc...etc... Les inventeurs tchécoslovaques se sont spécialisés dans les machines agricoles et ont rendue célèbre l'agriculture tchécoslovaque. Ils ont aussi perfectionné la raffinerie du sucre de betterave et ont fait de ce produit une des principales exportations du pays.*

*En ce qui concerne la fabrication de la bière, la marque de Plzen était considérée si parfaite que de nombreux fabricants étrangers adoptèrent sans scrupules cette marque commerciale pour leur propre fabrication. Si on la buvait dans les verres tchécoslovaques, cette bière semblait encore meilleure car la verrerie de Tchecoslovaquie ainsi que son industrie de porcelaine et de textiles sont aussi excellentes que bon marché*

*Les meilleurs canons et les meilleurs tanks de la période d'avant Munich étaient fabriqués dans les ateliers Skoda / lire : Chkoda/ à Plzen par des ingénieurs tchécoslovaques. La mitraillette Bren est une invention tchecoslovaque,..*

*A Zlin, Bata /lire : Batya / fabriquait des chaussures d'après des méthodes révolutionnaires de production en série et partout, dans toutes les classes de la société les chaussures devenaient meilleur marché et plus confortables.*

### LE «SOKOL» ET LES SPORTS

*Tous les six ans, à Prague les Tchécoslovaques célébraient un grand festival sportif, dirigé et organisé par le «Sokol» / Le Faucon/, la plus grande organisation volontaire de gymnastique du monde et qui exerçait une grande influence sur l'âme nationale par son patriotisme et par son esprit démocratique. Le «Sokol» avait près d'un million d'adhérents qui étaient répartis dans des milliers de clubs locaux. A l'instar de cette organisation tchécoslovaque, des organisations du « Sokol » ont été créées dans tous les autres pays slaves.*

*Indépendamment du grand nombre d'adhérents, certaines organisations religieuses et ouvrières collaboraient avec le «Sokol» dans toutes les activités ayant trait à l'éducation physique de la nation. Actuellement. le «Sokol», dissolu par les Allemands en Tchécoslovaquie et soumis à une terrible persécution, existe toujours parmi les Tchécoslovaques exilés dont il ranime la foi et le courage.*

*Les Tchécoslovaques étaient d'ailleurs célèbres aussi dans les domaines des autres sports, surtout de foot-ball,-dans lequel une équipe nationale fut victorieuse aux Jeux Olympiques mondiaux de 1920, Le tennis et le ski étaient aussi les sports nationaux de la jeune Tchécoslovaquie.*

(à Suivre)

## POEME KURDE

### SANS VOILES

A quoi sert de te voir nue
Sans voiles et sans pudeur
Comme le ciel du désert
Avec ses mots de mystère
Comme un son de prière
Comme l'écume d'une cascade
Comme les colonnes des arcades.
Veux—tu vraiment me donner
Ta beauté et ta douceur
Dévoiles—moi ton coeur.

### A MOI LA BRUNE

Elle est à toi la sagesse
Aux croyants la paresse
Et les chimères d'or.
Aux avares l'or
Aux fleurs le printemps
A l'automne les ravages
Pour les vents les orages
Aux champs le soleil
La douceur à l'abeille
A la mer les désastres
Au ciel les astres
A la nuit la lune
Toi sois mienne, ma brune.

DR. BEDIR KHAN

ALGER (A. F. I.) — Le Général Giraud, Commandant en Chef des Forces Françaises, passa en revue, au cours des trois dernières journées, les formations nouvellement rèarmées. Il inspecta un groupe de «commandos» composé principalement de vétérans de l'ancien Corps francs d'Afrique et remit la Légion d'Honneur à son Commandant pour sa glorieuse conduite en Tunisie.

Le Commandant en Chef assista ensuite à des manoeuvres en montagne de la même division d'infanterie d'Afrique. Il visita encore un groupe d'aviation de chasse sur le terrain.

Il y eut des scènes parfois extrêmement émouvantes telle fut la messe dite en pleine air, au dessus de la Méditerranée, «quelque part en Algèrie,» à la mémoire des morts des Corps francs d'Afrique.

Après la messe, Mgr. Hincky, délégué des Evêques Alsaciens—Lorrains et Giraud, prononcèrent de brèves allocutions.

Giraud déclara: «Nous avons honoré les morts sur la terre d'Afrique. Nous saluerons les vivants sur la terre de France.»

### LA PRESSE KURDE

*Nous signalons, à nos lecteurs s'intéressant au mouvement culturel KURDE, les journaux et périodiques kurdes suivants:*

**RIYA TAZÉ.** organe des Kurdes de l'U.R.S.S paraissant à Erivan.

**GALAWÉJ.** la plus grande revue littéraire kurde, parait chaque mois à Bagdad, avec 80 à 100 pages de texte

**JIYAN** hebdomadaire politique et littéraire. paraissant a Souleymanié.

**HAWAR,** revue littéraire bi-mensuelle paraissant à Damas. Textes kurdes et français.

**RONAHI** Revue mensuelle illustré, paraissant à Damas.

## DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

Nivîsevan
Grigorî Petrof

Wergerandok:
Qedrî Can

11

Fam bikin me'mûrno! ji bo terbiya milet, hûn ji mamosteyan ne kêmtir in,., Hûn jî dizanin ku mamosteyên bêqanûniyê kî ne? Ew me'mûr bi xwe ne, ji ehalî re ne îtaeta qanûnê ew hîn dikin... A... ji bona van tiştan, ez bi navê dewleta Fînlanda ji we hêvîkar im: hûn merivên qanûnê, terbiya îtaeta qanûnê hînî ehalî bikin... di nav ehalî de hisên edalet û semîmbidin çandin.»

Ev nutiq, ne nutqa Senelman a pêşîn, ya a paşîn bû... gelek nutqên wisan berê û paşê da bû...

Di nav me'mûran de, ev fikrên qenc belav bû bû û ehalî jî, li her derê ji wan re bawerî nîşan da. Ji yek-du tovî «neslî» bi şûnda, sinifeke me'mûrên Fîn ên nuh derket: me'mûr bi îrfan û exlaq bilind bûn; ji hemî dinê re bûn nimûne. Nuha xelk bi me'mûran îftixar û ji wan re piresteş dikin...

### Qişle-Dibistana Xelkê

Hêj ji zemanê hakimiyeta Isweçê ve qanûnek teşkîlata bingehî ya Fînan hebû, li gorî vê qanûnê bi navê «Syme» encumeneke wan a welatî, pûl û pereyên wan î xusûsî hebû... Bi kêmanî, ordiyek jî xwedî dikirin. Piştî ketin bin hakimiyeta Rûsan jî, ordiya xwe parastin. Lê di zemanê Îsweçan de, li ser van ordiyan gişan me'mûrên Îsweçê hebûn. Miletê Fîn ji bona çand «hirs» a Îsweçan, destik «wasîte» kî bi can bû.

Finlanda ku bi navê «Suomî» ket bin destê Rûsan, ji bona girtina van cihan, ji bona xwedanê welatê xwe bibin, dest bi xebatê kirin, ewilê destê xwe direjî karê biçûk kirin; bere bere şûna mamosteyên dibistana navîn û bilind jî girtin û ji alîkî ve jî, hêdî hêdî ji Fînan hakim, tixtor û me'mûr hatin bijartin.

Ordiya Fîn, a biçûk jî dibû ordiyeke welatî. Di zemanê Îsweçan de, pirê neferan Fîn bûn; muameleya zabitan li hemberê neferan, her weke ordiya Îsweçê bû.

Îsweçan miletekî qehreman e; Di zemanê (Réfermation) de, Gostav—Adlof, û di zemanê Petroyê Mezin de Qarlê diwanzdim, şan û şerefa ordiya Îsweçê di Awrûpayê de giyandin derencake bilind. Lê wê gavê qudreta leşkerên Îsweçê di destê arîstoqratan de bû; di nav welêt de ji tovê leşkeran sinifek «kast» pêk hati bû... Her çî ji wê sinifê ba li xwe bi çavekî nizm, û li tucar û mineweran bi çavekî bilind mêze dikirin. Efradê milet, yanî herçî nefer bûn, di bin nîzameke giran de bûn.

Zabitan di wezîfê de, ji xêndî talîm, derbasbûn «îstî'rad» û jiyîna qişlê pêvê bendewar û têkilî tiştekî din ne dibûn; gava ji nav wêzîfê derdiketin şerab vedixwarin, bi kaxetan dileyistin û dans dikirin. Prên wan kêm xwendî bûn; gava dibistana xwe diqedandin, yekcar dev ji xwendinê berdidan. Mefkûreyên wan ên welatî û civakî tune bûn. Tenê dizanî bûn bi nepix şûrên xwe bişeqşiqînin..... Ji vê pêve ji pereyên xwe xere dikir in. Tim bi onîformeyên şîk digeriyan; di hêwan (salon) an de, bi meharetî dans dikirin. Hinek jî bi nexweşiya vexwarina şerabê û lîska kaxetan keti bûn.., gelek zulm li neferan dikirin; ji wan re digot in; Gayên Qişlê.,. û bi wi çavî li wan dinêrin...

## DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

### HISO

Hiso çûye Mêrdînê
Hiso way
Toltajîkî b'xwer tînê
L' ser doşekê datînê.

Şêxmûs tê dimeyizînê
Hiş û aqil na mînê
Hiso way.

Sênca Hiso sor çilo
Tû l' rihê Hiso binêr
Mîna teriya kûçikê şilo.

Mala Hiso l' nav mala
Dermanê rihê Hiso
Hebik rêxa dewara.

Mala Hiso l' Erişkê
Dermanê rihê Hiso
Hebik Zelqa mirîşkê.

### XIZÊMÊ

Derdê Xizêmê
Tîrka li bana
Destê min kin bû
Ne g'ha guhara
Belê ez dinalim
Ji derdê keleşyara
Xizêm winda bû
Der ban û bana
Xwediyê Xizêmê
Xizêm winda kir
Tev li zencîrê
Tev li zencîrê

Ez hatim Cizîrê
W'ez çûm Cizîrê
Xizêm winda bû
Tev li zencîrê
J' derdê keçika
Binê' ez bêhal im
Ji derdê keçika re

Ez dinalim
J' derdê xwediy, Xizêmê'r
Ez ketim vî halî
Xizêm winda bû
Tev li zencîrê.

Ez diçme Cizîrê
Cizîra Bota
Xizêm winda bû
L' govenda xorta
Ez xizêmê na dim
Bi sê gayê cota
Xizêm winda bû
Tev l' zencîrê

Ez d'ibême odakê
Odake tije
Fincanê qehwê
Erdê dimije
J' derdê Xwede'y Xizêmê'r
Ez ketim vî halî
Xizêm winda bû
Tev li zencîrê,

Diçime odakê
Odake vala
Fincanê qehwê
Erdê dimale
Hey la ez nexweş im
Te çi huwal e.
J' derdê xwedi'y Xizêmê'r
Ez ketme vî halî

IMP. LE MIROIR D'ORIENT • BEYROUTH

## PÊJINÊN DINYAYÊ

### REFÊN HEVALBENDA BER BI FIRINÊ NE



Ji Wêneyên Eniya Şerê Pasifîkê, Ji Bona Balafirvana Dema Êrîşê Hatiye.



Ji bergehên axa Çekoslovakyayê, karxane û febrîqeyên Pragê ên mezin.



Ji Wêneyên Payetextê Çekoslovakyayê, Gerinendekariya Elektrîkxana Pragê

## STOLA BRITANI

### ERDÊ ITALYAYÊ BOMBARDIMAN DIKE

LONDRE—R: Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî elam dide: Stola britanî xelîca Napoliyê bombardiman kiriye.

CEZAYIR—R: Serdariya behrî dide zanîn ko şevadî, gelîlekî britanî, ji qriwazor û destriyoran bihevketî, di xelîca Napoliyê de, bêndera Kastela—Maret—dî—Stabiyê daye ber derbên xwe. Ev bender qêrargeheke behrî ye û tê de destgeh û tamîrxaneyên waporan hene. Dîsa li wê şevê, qiweteke behrî a din, li pira rêhesinan ya Kapî Vatikanoyê xistiye

CEZAYIR—R; Leşkerên Hevalbenda Guardia vegirtiye, ev bajar dikeve bakurê Asîrealê û li ser riya Ripostoyê ye.

CEZAYIR— R: Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakur dide zanîn: Şevêçûyî refên me, ji bombeavêjên sivik hevedudanî, direjî erdê Sicilyayê kirine û li rê û rûhesinan, û li çeper û şargehên dijmina xistine. Duhî bi ro jî bombardimana hêjagehên Sicilyayê dom kirine. Ji aliyê din nêçîrvanên Hevalbenda mîna berî di avên Sicilyayê de zora xwe dane waporên Mihwerê, çar gemiyên biçûk bin av kirine û zerer gihandine zehf barkêşên din.

ROME— Danezana talyanî dibêjê: Refên Hevalbenda zehf caran direjî Mesînayê kirine û bi awakî gelek xurt lêdane.

Sal 1 — Hejmar 17

Duşemb 23 Tebax 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

XWEDÎ Û GERÎNENDE : MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

# ENIYA BEHRA SPI

## Şerê Sicilyayê Qediyaye, şerê Ewripayê Destpê Dike

CEZAYIR—R: Refên Hevalbenda û çengkeştiyên brîtanî û emerîkanî, hêjagehên erdê Italya Nîroyî û benderên di wî, bê etlahî bombardiman dikin. Rê û rêhesinên Italyayê, pir û derbazgeh û febrîqe karxane, û balafirgehên di wî, di bin xurtî û giraniya derbên refên hevalbenda de, ji bombeavêjên mezin «Liberators» û Kelehên Firok bihevketî, xira dibin. Nûçeyên dawîn elam didin ko Ordiyên Hevalbendan haziriya xwe kirine û li hêviya emrê êrîşê sekinîne.

# BOMBARDIMANA BAJARAN

## Êrîşên Refên Brîtanî û Emerîqanî Ên Xurt

LONDRE—R: Hefta borî refên emerîkanî û brîtanî hêjagehên erdê Germanistanê, erdên vegirtî û yên Italyayê bombardiman kirine. Bajarên elemanî Berlîn, Awisburg, Wilhelmshafin, Wîner—Noystadt, Duisburg, Hamburg, Kîl, Pînemunde, şaristanên talyanî Mîlan, Tûren, Napolî û balafirgehên erdên vegirtî, ne maza yên Frense, Holende û Belçîkayê derbine giran xwarine. Çekê Hevalbenda ê hewayî jê pê ve zererine dijwar gihandine trên, loqomotîv û benderên erdên Mihwerê, û ji aliyê din zehf balafirên dijmina avêtine erdê.

# BER BI VEGIRTINA XARKOVÊ VE

## Ji Hezarî Bêtir Tanş û Balafir Hatine Xirakirin

MOSKÛ—A.F.I. Leşkerên sovyetî ber bi Xarkovê ve şerî dijmina dikin, ber êrîşên wan bi şûnda vedigerînin, zora wan dibin û pêş ve dikevin. Di nav heft rojên dawîn de qiwetên sovyetî ji hezarî bêtir tang û balafirên elemanî ji hev de xistine û 600 bajar û avahîgeh vegirtine, Ji aliyê din êrîşa Ordiya Sor ber bi Brianskê ve, bi serfirazî pêş ve diçe.

MOSKÛ—R: Danezaneke sovyetî a xas elam dide: Ji 5—ê tirmehê 1943. û heta 20—ê tebaxê 1943. Xesarên elemana ev in: milyonek eleman hatine kuştin an brîndar kirin; û 4.600 balafir, 6.400 tang, 3.900 topên elemanî û 20.000 girgirokên wan ên motorkirî (kamyon, otomobîl barkêş) ji hev de ketine. Qiwetên rûsî 857 tang, 1.274 mitralyoz, 3.490 top û 4.230 girgirok standine; û 25.600 hêsîr girtine.

# KISKA HATIYE VEGIRTIN

## ESKERÊN EMERIKANI & KENADI KETINE VÊ GIRAVÊ

WEŞINGTON—R: Wezareta emerîkanî a behrî dide zanîn: Leşkerên Emerîkanî û Kenadî girava Kiskayê standiye — giravek ji komgirava Eleutyenê.

LONDRE—A.F.I. Di nav 8 rojên dawîn de, refên brîtanî 5 cara li hêjagehên Berlînê xistine.

KEBEK—R: Roja sêşembê civanê Kebekê wê biqede û roja çarşembê Serekcimhûr Rûzwelt wê here xatirxwaziya Otawayê,

NÛ-YORK— R: Xeberdoxekî Qerargeha Hevalbenda a Mezin li Efrîqa Bakurî gotiye: Nimînendeyekî sovyetî ji Moskovayê ketiye rê û tê Cezayirê, ewê bi Komîte Frensizî a xelasiya welêt bendewar bibe.

ZANÎN Û PÊŞKETIN

# DEWRAN

## Pirjinî û Belayên wê

Nexweşiya pirjiniyê di nav hemî mislîmanan da, nemaze di nav me kurdan da gelekî reh û rîç berdane erdê. Li nik hinekan pirjinî tiştek ji mêraniyê, biçav hinekan jî kêfek ji kêfan e. Ma gelo tu bê ramana van celeb mirovan e bi ciye?.. Bersiva vê pirsê, bê şik ji «no» yeke botanî pêva nîn e.

Ji jinekê pirtir anîn, ji malkambaxiyê pêva ne tiştek e. Berî her tiştî civîna du jinan di himbêza mêrekî, an di bin banekî da ji ber sebebên jêrîn, çira bextiyariyê di nav wê malê da vedimirîne:

1.—Ji ber dexsa hewiyan lec û qirên di nav malê da kêm nabe ko bi vê yekê rihetiya xelkê malê bi carekê direve.

2.—Mala ko lec û qirên tê da kêm ne be, bê şik ji xêra Xwedê bê par dibe û roj bi roj ber ve xira bûnê diçe ko bedbextî di wir da dest pê dike.

3.—Ne mikûne ko kurên hewiyan ji hev hez bikin; ji vê jî dubavî dikeve nava biran. Hatiye dîtin ko pir caran ji vê dubaviya han neyarîne bê eman hatine pê.

4.—Ji ber rik û dexsê, hewî ji bo serdestiya li ser berbera xwe hînî derew û bêbextiyan dibe ko bi vî awayî gewherê xwe ê hêja wenda dike. Jina ko dakete vê kortala han a kirêt; êdî ew ji mirovekê pirtir, dibe rawireke direnđe.

## Ev in Hinek Ji Belayên ko

Ji pir jin anînê tênî... Hemberê van belayên han, kes nikare ji me ra qenciyeke pirzewacê rave bike.

Heye ko hinekên ne serwextêrastiyê bêjin: heke pirjinî ne e çak bûya, an tiştekî ewçend î kirêt û bê rê bûya, teqez Xwedê di Quranê da rê ne didanî... Berî her tiştî ên ko dixwazin vê yekê bêjin, divê qenc bizanibin ko Xwedê herwekî ew dizanine emir nekiriye. Xwedê di Quranê da dibêje: «Heke hûn dikarin di navbera wan da wekhewiyê bînin pê; dudu, sisê û çar jin anîn ji we ra dirist e. Na ko hûn nikarin wan weke hev bigirin, yeke bi tenê ji we ra bi xêrtir e.» Ez dibêjim, kes nîne ko bikaribe bêje: ev yeka han bi min dibe: anê «ez dikarim di navbera du jinan da wekhewiyê binim pê»... Çima ko bicihanîna vê gotina Xwedê gelekî dijwar e.

## Dîsa Divê Neyê ji

Bîrkirin ko dema va ayeta han daketî, di nav erebên ko Quran bi zimanê wan hatî da, ~~tolazî~~ bi awakî kirêt belav bû bû. Hingê ji vê tolaziya han du belayên mezin kiyanê civata beşerî dihejand in. Yek ji van nexweşiya ko di riya tolaziyê da li nav xelkê belav dibûn; a duduyan pirbûna zarokên bêbav. Ji bo ko pêşiya van her du belayên han bête girtin; bi şertê ko di navbera hewiyan da wekhevî bête pê, Xwedê rê daye. Heke ne ji ber van sebebên han be, ew yeka ko mirovên dilçak û dilovan qîma xwe pê nînin, çawan Xwedayê rast û rihniyê pê qaîl dibe.

Ên ko di anîna çend jinan da çakiyekê dibînin, an vê kira han tiştekî kirêt nizanin, teqez ew jinan weke xwe mirov nizanin; heke em hîn rastir bêjin, ew jinan weke dewaran dihesibînin. Ji xwe jina ko bi çûyîna ser hewiye, an bi hatina hewiyekê qîma xwe bîne, ji dewarekê pê va ne tiştek e. Ez dibêjim, ji mirovekî eqilmend ra ne hewceye ko ji dewareke du ling hêviya anîna kurekî hêja bike...

## Iro Ji Me Kurdan ra

Divê ko em di vî warê han da çavên xwe vekin û bi riya pêşiyên xwe da neçin. Em keçên xwe weke dewaran nefiroşin û wan hildin cihê mirovatiyê. Ew keçên ko ê sibe bibin diyên zarokên me. Îro me çiqaş qedra wan girtibe, ew qedir ji bo zarokên sibe ye. Jineke bêbext û derewîn kurekî rast û bi bext nayê dinê. Bela nezanî, bêkêrî û xirabiya me, ji nezanî û bê qedriya jinan tê.

«Jinên miletekî mîzana serbilindî û pêşveçûna wî miletî ne». Dil dixwaze ko xortên kurd vê yeka han bidine ber çavên xwe û riya pirzewacê li pêş kesên ko dixwazin pê da herin bigirin. Divê xortên gelparêz ji bîr nekin ko ji bo gîhandina cîlekî çak ew hewceyî dê ne hêja ne. Diyeke hêja ew e ko berî her tiştî bizanibe ko mirovek e û di jînê da wekî mêrekî xweyî beq e. Hîn piştî vê ye ko jibo her diyekê xwendin û zanîn divê.

OSMAN SEBRÎ

# DI SURIYEYÊ DE

## CIVANÊ CIVATMILETÊ SURI Ê YEKEMIN

Civatmiletê Surî ê nû,civanê xwe ê pêşîn daniye. Pêşiya 2 no an de, bi 118 erê, Mîrza Şikrî Beg Qiwetlî hatiye bijartin Serekcimhûrê Suriyeyê. Wezareta nû bi destê Mîrza Sadilah Beg Cabirî hatiye çêkirin. Ev in lebatên Wezareta nû: M.M. Sadilah Beg Cabirî Serekwezîr, Cemîl Merdem Beg Dervekarî, Lutfî Hefar Hindurkarî, Xalid El Ezim Maldarî, Mezher Paşa Reslan Avaniyên Welêt û Karên Bixwedîkirinê, Dr. Evdirehman Keyalî Dîwan û Qanûn, Tewfîq Şamiye Çand, û Dan û Standin, Nesûh Buxarî Şer û Hînkirin.

## Xwendevanên Delal

Piraniya we kiriyariya ROJA NÛ hêj ne şiyandiye ! Xurtiya ROJA NÛ bi himeta we çêdibe.

# DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

## Canê

Keçka Mîrê Swêrekê
Kumber ketî kêlekê
Tu b' qedrê rebê xwe kê
Bişkoşkê êlek vekê
Devê min d' memkê xwe kê.
Can hey can
Keçka Mîrê Mûsilê
Kumber ketî ser dilê
Çavreş î meşenbilê
Can hey can
Can hey can...
Kirasê te mebrûm e
Hûr û kûrik didrûme
Heçî yarek wan tune
J' her du dinya mebrûm e.
Can hey can...
Kirasê te meles in
M' da 'ber derz û meqes in
Heçî yarek wan tune
J'her du dinya bêkes in.
Can hey can...
Kirasê te kitan e
Heçî yarek wan tune
J'her du dinya bê mal e.

## Henîfa

Henîfa keçka keye ye
Keçka meleyê deştê ye
Xeftankî Şamê lê ye
Çi bejnek çînar lê ye
Dilketim wê bejnê ye
Ezê bi çeplê te bigirim
Bavêm binya xetê ye
Emê herin Bêrûtê
Bêrût weleh l' ber behrê ye.
Henîfa çû bû cila
Cil şuştin b'her du mila
Porê sor ketî mila
Tama memkên te xweş in
Mîna qinê behîva
Mîna qinê gwîza
Mîna rûnê ê hîza
Ezê bi çeplê te bigirim
Bavêjim tara fila
Henîfa dît l' ser qubê
Bejin ziravê, j'darê rimê...

# DEMA NIHA

## XARKOV KETIYE

### ORDIYA SOR DAYE PEY DIJMINA

MOSKÛ—A.F.I. Danezaneke sovyetî a xas elam dide: Ordiya Sor piştî şerine xwîndar zora elemana biriye û bajarê Xarkovê standiye.

Weşington— Di erdên pişt-behran de, li Asya, Efrîqa û erdê Brîtanya—Mezin de 2 milyon eskerên emerîkanî hene.

## Berberiya Welatperweran

### BIXURTI & MÊRANI DOM DIKE & ZÊOJTIR DIBE

STOKHOLM—R: Xelkên welatên vegirtî, nemaze welatparêz û wetenperwerên Norvecistan, Yugoslavya, Belçîke, Holende û Yewannistanê hin bi hin hêj bêtir dijminatiya xwe şanî elemana didin, dirêji qefle, qerexol û çûn û hatina wan dikin û her çend jî ew bi xwe jî têne kuştin, ew biyaniyên ko bê heq û sebeb ketine erdê welatê bav û kalê wan, bi piranî safî dikin; ro na bore, berî ko eleman çend wetenperwerên hêja bidin ber tifinga.

## DAWIYA SICILYAYÊ

WEŞINGTON— Sicilye ji hêla gerandin û peşve ajotina şerî war û qerargeheke hêja ye, ne maze ji bona çekê Hevalbenda ê hewayî. Îro 25 war û qerargehên Sicil yayê yên behrî û hewayî, di destê qiwetên emerîkanî û brîtanî de ne. Eskerên Mihwerê yên ko be revaniya Sicilyayê kirine 300.000 bûn. Gava êrîşa Sicilyayê destpê kir Hevalbenda 160.000 esker, 14.000 kemyon, motosikil û oto mobîl, 600 tang û 1.000 top derê xistine erdê Sicilyayê, Ordiya Emerîkanî 7 li baskê çepê, a kenadî li eniya navîn, û Ordiya brîtanî heşt li baskê rastê bûn. Karê şkênandina yekîneyên elemanî ên bijarte, yên ko di Katanê de şer dikirin, Ordiya brîtanî 8 pêk aniye. Hevalbenda di şerê Sicilyayê de, ji hêla jêrîn ve, 130.000 hêsîr girtine, 55 waporên dijmina xeriqandine, 62 hebên din şkênandine û, 2.000 balafirên Mihwerê xistine erdê an li erdê pelixandine an ew standine

MELBURN— Bi bombeyên refên emerîkanî di Nêwekê de 170 bombeavêjên japonî hatine xira kirin.

## Şerê Mehmûdê Emer Beg

Way lo mîro, way lo mîro...
Li Dêrika şewitî, li van kaşa. es kerê mala Osmanê Reşo î giran e, sekinî li dara kero, li lata sor û li zinara sior- fena, swarê Delî Paşa,
Bejna Mehmûdê Emer kirin nîşana bêş ataşa.

Edê bankir, por kurê Medê, Dêrika şewitî bi qesebe ye, dara kero, lata sor, zinara sior di ser re ye.

Bejna Mehmûdê Emer kekê Qado zirav e, gul û çîçek û kulîlk û rihana yar pence ye.

Edê bankir: porkurê Medê sibe bû, berê şifaqê, li me ronî bû mêla sibê, li me sipî bû, ji berê da orta mala Osmanê Reşo û Têlî axa, neyarî bû, eskerê mala Osmanê Reşo, li dara kero, li zinara sior, li pêşiya lawê Emer Begê cî bi, cî bû kuştine. Mehmûd Emer, reîsê Qezakê xwîna rûtan Ebasan, li serê kekê mi safî bû.

Edê bankir, porkurê Medê li Dêrika şewitî, li Baxçan û li Baxa.

Bejna Mehmûdê, Emer zirav e, gul û çîçeka serê şaxa. Xwedê dîne mala Osmanê Reşo kuştine, Mehmûdê Emer kekê Qado, serekê Qezakê, ferxê mala Têlî axa,

Edê bankir porkurê, Medê dilê mi letune, Xwedî rebî ar têkeve Dêrika şewitî, mala Osmanê Reşo, ser û binî.

Ji berê da, mala Têlî axa û Osmanê Reşo, ji bav û kala da, tim dujmin in....

Kuştine Mehmûdê Emer, kekê Qada, xwîna Mehmûdê Emer Begê da, ber dêla kotek jîn e. Edê bankir, porkurê Medê Dêrika şewitî bi şewite, bi kevir gewr e. Duxana çapliyê mala Osmanê Reşo li na bêna kûra, dirba zinara sior kirin ewr e, kuştine Mehmûdê Emer Beg, li ser kekê Qado rakirin axir dewr e.

Edê bankir, porkurê Medê Dêra şewitî bişewite, hi mewa tirî Xwedê dîne, mala Osmanê Reşo, li zinara sior, li dara kero. li pêşiya lawê Emer Begê difitlî, Edê bankir, porkurê Medê ez ne ketime, ber kuştina lawê Emer Begê, ez ketime ber wê xemê ko meytê me ma bê Xwedî.

EBDÊLHADIM MIHEMED

## —SERBESTÎ—

Serbestî.— Ç i bêjeyeke xweş e. Serbestî.— Dengê bêjeyeke zîz û ahengdar e ko guhên guhdaran şa dike.

Serbestî.— Bextiyariyeke geş, direj, û bê dawî ye.

Serbestî.— Bêjeyek şîrîn u mezine ko bitenê ew li sir zarê mêrxas, xweyî xîret û xweyî rûmetan diçe û tê, her devê camêran vê gotinê delal dibêje....

Serbestî.— Di gotinê da, pirsek ji pirsan, ji çend tîpan bi hev ketîye; lê di warê jiyînê da, hêjayî her tiştî ye. Ev gotin her dem bi xwînê têtê kirîn, û bi avzêrê têtê nivîsîn.

SERBESTÎ.— Şewleke welê ye ko şevên tarî ronî dike.. Ev şewl bi tenê ji çavên hişyar ra dixewine. Çavên qels û raza, ji dîtina wê bê par in...

SERBESTÎ. —Rêyeke rast, lê gelek dijwar û bi sitirî ye. Her pêd li ser wê re nikarin biçin...

SERBESTÎ.— Armanceke welê giran û mezin e ko, di rêya wê da, ya erzantir mirin e.

SERBESTÎ.— Her teştê çak û bi rumet e. Remza wê aleke rengîn e ko di bin pêl û tîrêjên tava wî da, jiyîn û xwîn rijandin, bextiyariyak e, ewçend buha ye ko bi destî her kesî nakeve!

SERBESTÎ.— Al, û welat, û serdestiyê dide mirovan.

SERBESTÎ.— çira jiyînê ye, ko bê wê, jîn dojeheke tarî ye.

SERBESTÎ.— Armanca kesên xweyîrûmet...

SUBHIYÊ DIYARBEKRÎ

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## EVE EMERIKE

Erdê Emerîkayê zehf mezin e. Emerîka di nav miletan de dêwek e. Pehniya wê 4 milyon kîlomêtir çargûşe ye. Têde 140 milyon xelk rûdinin. Cihê tu miletî, mîna yê emerîkanî ne bikêrhatî ye. Behrên û biyavên vê erdê ne mîna, hev in, ne yekreng û yek aheng in.

Çiyayine bilind, rêl û darista nine mezin, deşt, nav deşt, berî û sehrayine bê tixûb û dawî, çem û



ŞARISTANEKE EMERÎKANÎ JI TEXLÎTÊ NÛ Û NÛJEN.

Etlentîk û Pesîfîkê çep û rastên wê de ne û pê dergehên ticareta dinyayê di pêşiya Emerîkayî de vekirîne. Ji benderên peravên Emerîkayê yên Etlentîkê û heta Ewripayê, rê 3.000 mîl dûr e. Ji benderên emerîkanî yên peravên Pesifîkê-wapor diçin benderên Asyayê.

Di Emerîka — Navîn de, coa Panamayê avên Behrên Etlentîk û Pesî fîkê digihîne hev û dû. Herwekî di dora Emerîkayê de du behrên mezin hene, tu milet nikare bi a wakî xurt direjî wê bike. Di bakurobar û şetine kûr û dirêj, tavgehine xurt, peravên germ û şîrîn goline çeleng ji spehîtiyên erdê Emerîkayê ne û pê dewlemendî û çelengiya vê welatî pêk tê. Şetê mezin Mîsîsîpî di Emerîkayê de ye, jê re bavê avan dibêjin.

Di erdê Kalifornyayê de, deştek heye, Deşta Mirî nav lêkirine, ev deşt ji rûyê behrê 200 pê nizmtir e.. Nizîkî vê deştê de çiyayê Okî heye, serê vî çiyayî ji rûyê behrê 14.000 pê bilindtir e.

Erdê Emerîkayê têr ma'den e;



DI NAV ÇIYAYÊN BILIND Û DARISTANA DE GOLEK RADIZE

rê Emerîkayê de Kenada heye. Kenade û Emerîka dostê hev in û deriyên sînorên her du erdantim û daim vekirî ne. Di nîroyê Emerîkayê de, Meksîke jî hevalê Emerîkayê ye. Dewletên erdên navîn û jêrîn jî dost û hevalên hev in.

Her wekî erdê Emerîkayê gelek fireh û mezin e, bergeh û bertêde berê komirê hesin, paxir, zêr, neft û zehf ma'denên din pêyda di bin. Darîstanên Emerîkayî de darin hene ko kes nizane çend hezar sal kevn in.

Her texlît fêkî, her texlît gul û gulçîçek rêl û bîstan, pariz û bexçe vê erdê dixemilînin, kok dikin.

# GOTARA Mr. BIRNES

## Bi Navê Serekcimhûr Rûzwelt, Mr. Birnes Gotiye

Weşington— Heqê me ye em bawer bikin ko di vî şerî de em sefirraz bibin, lê şerên mezintir hêj çênebûne, ew di pêşiya me de ne. Tasa şihînê ber bi me ve giran bûye; û me xwe bi timamî pêk aniye. Lê na be ko em bawer bikin ko qiwetên Mihwerê, bê gotin û bazar wexteke nîzing de xwe bavêjin bextê me, delêletên wilo nîne. Me hêj bi awakî mezin, êrîşî japona ne kiriye. Ordiyên Hevalbenda hêj ne ketine erdê Germanistanê. Riya Berlîn û Tokyoyê di pêşiya me de ne, û ev reyên he dûr, dirêj û xwindar in. Tiştê hêja ko me xistiye destê xwe ev e: êdî girtin û berdan, lêxistin an li hêviyê man, deste me de ye û li gora daxwaza me ye. Ji aliyê din leşkerên me, leşkerên hevalbenda û çek û posatên me her bêtir û yên dijmina hin bi hin kêmtir dibin.

## Strana Kurdî

### HECÎ MûSA BEGÊ XWÊTÎ û GULÊ

Eman Gulê, ermeniyê.

Tu kerem ke ji ber tavê wer ber siyê.

Gula Narîn, axçîka fila, hev de berda ji teşiyê.

Çeng bi çînê, neqşê lengeriyê, sifet pa'nê, wek sêniyê.

Tu kerem ke elb û eyar—şîrê xwe hilîne, da em herin bêriyê.

Hecî Mûsa Begê zirav siwar bû li xam ciwaniyê, dike Gula Narîn, axçîka fila, qîza Reîsê Dêra, bên ser dînê sulmaniyê.

Gulê bankir: Eman Bego, mi li diyara diyarê ay zemana; li min û li va dema li va dewrana, sûnd xwarî me, bi sûnda keşakî û du metrana, heta tu goştê canê mi raneke bi wa dirana, heta tu hestiyê canê mi ne firîne, bi çakûça û kerbetana, tu car nabim jina mêrkê bi sulmana.

Eman Gulê, mal şewitiyê, mi li diyara diyarê Abyemana, koç û keriyê me, ne çû zozana, ramîsanê Gula Narîn, axçîka fila, li cem dilê min, pir xweştir e, ji ramîsanê heft keçikê musulmana.

Gulê ban kir: eman Bego,Dêra bavê min pir mezin e. Keşe û rehab û metran lê rûniştin ser û bin e.

Sûnd xwarî me tu car ji mêrkê musulman ra ne bûm jin e.

Ax lê eman, lê, lê Gulê, lê axçîkê ermeniyê, dil kafirê, tu li ba dilê mi sifet sorê, fena çirê.

Te gulikê qezê berda ser qonderê, Gula Narîn meşiya li ser pirê.

Hecî Mûsa Begê zirav bi qevda şwîr girt û xar dibirê.

Gulê ban kir: eman Bego, tu qe mê, û xwe me êşîne, ezê dengekî dudo li keşa û li metrana biqîrînim, tu musulman e, ez file me, tişlekî, dînê min û te tev tunîne.

Ezê daw û delinkê xwe hilkişînim. Rêka qoce Stanbûlê, bigirim bi ca'dînim, textê sultan Evdulhemîd, di bin da bihejînim, perda sultan Evdulhemîd biqetînim. Kêra qelemteraşê ji bêriya xwe bi derxînim, ezê bi canê xwe ê gewr xînim, pêlê xwînê bi ser textê sultan Evdulhemîd da birjînim.

Heft duwelê ecnebî û dewleta Alî Osman bi xwe û te bihesînim.

Kirasekî bê pêsir, bi ser bejna xwe û te da tev de dînim, belkî Sultan Evdulhemîd heqê mi ji te bistîne.

Gulê ban kir: eman Bego ezê ban kim dengekî dudo ban rahiba ban keşa kim, mal şewityo, ma tu musulman e ez file me,—ez dikim û nakim xwe ji destê te pak nakim. Sûnd xwarî me bi Încîla Îsa û Mûsa, ez tucar terka dînê Îsa nakim mehra mêrkê musulman bi eşhedê bi şefaeta Muhemed, li ser xwe qebûl nakim, zimanê Katolî û Ermeniya li ser xwe zêde nakim, ezê ruhê xwe li ber dînê bavê xwe can fîda kim.

Hecî Mûsa Begê bankir: eman Gulê, ew sibe ye, xweş sibe ye; tu kerem ke, ezê bîskê werim hînda te ye, ezê maç kim cotê memkê te ye, mirin heq e, qebra tarî mala me ye. Gulê bankir. eman Bego, te wer mebêje, ji dînê bavê mi ra pir xerab e, keşe rabû ji ber rahib e, heta ez li darê dinyayê sax bim, cotê memkê mi wê ji Miqsiyê lawê apê di mi ra be.

Hecî Mûsa Begê ban kir: eman Gulê tu wer mebêje, û me xingire, heçî cara ez te dibînim, dilê min mezin dibe, dibe gir e, ez bi mêraniyê ji Miqsiyê lawê apê te mêrtir im, bi xurt bûnê jê xurt tir im, mi wellehî, qesem kire, eger tu qîz be, eger tu jin be, eger tu bi mêr be, eger tu bi mehir be, illim ezê şevkê bi destê zorê li te bihêwirim.

Gulê ban kir: eman Bego tu bes, li mi de, ez gune me, ez Gula Narîn, qîza reîsê Dêrê, ez bi xwe me, tu musulman e tu begler e, ez axçîk im, ez file me, ez hestîyakî heram im.

Li nav cimaeta musulmana, ji te ra ser hevde me.

Ez ji dîna, rebena dînê bavê xwe me.

Hecî Mûsa Begê ban kir: eman Gulê, roja me hilatî qirî perî, şewqê xwe da qesra bavê Gula Narîn da, qapîkê her çar derî, eman Gulê, mal şewityê, tu ne biçûk e, ne mezin e, tu nuh kemilî, heger tu file ye, heger tu çila ye, mi tu qebûl kirî; şev û rojê Xwedê bîst û çar saet in, mi seba Gula Narîn, miraq kirî.

Gulê ban kir: eman Bego, tu bibêje faîde nake, gotina mêrkê musulman, li cem min pere nake, mi ji tera ne go: Sûnd xwarime, ez tu cara terka dînê Îsa nakim, mehra mêrkê musulman, li ser xwe qebûl nakim, rûyê xwe ji hizûra bav û birê xwe reş nakim.

Hecî Mûsa Begê bankir: eman Gulê, ew havîn e xweş havîn e. Hêviya xwe dikim ji rebê jorîn e, ezê carkê, carkê te bi tenê, li baxçê bavê te bibînim, tu zanî, ez Mûsa Begê xwêtî, Baxê welatê jorîn im, tu zanî ezê destê xwe li qevda xelef sorê xînim, ezê xerzaniyê ji ber fota ecem dê bikşînim, ezê Guliyê t'a sor û sosinî, li destê xwe bigerînim, temamê fila, eşîra bavê te bên, nikanin te ji destê mi biderxînin.

Gulê ban kir: Eman Bego, dêra bavê mi biçûk e, keşê û rehab û metran lê rûniştin sera sûk e. Şûndxwarî me, bi Încîla Îsa û Mûsa, ji mêrkê musulman ra na bim bûk e.

Sibe bû, bira ne hata, bîna bayê her li newela, sibe bû Hec Mûsa Begê zirav, sekinî li orta mala, carkê nêrî Gula Narîn qufik hilanî, ji kûçikê bavê xwe ra, çû hinara Hecî Mûsa Begê zirav, serê xwe girêda bi yazmakê û çar desmala, mîrê zirav çente dagirt ji derbê enextara. Hêdî, hêdî meşiya nava dara. Guliyê Gula narîn, li destê xwe gerandî weke cara; berê Gulê da çem û şeta û qilîcê behra. EBDILHADÎ MIHEMED

## PÊJINÊN DINYAYÊ

### CENG & RAHETI



Leşkerên Ordiya Britanî A Heştan Dikevin Mesînayê. Ev Eskerên He Skoç In û Mîna Kurdan Ji Dahol û Zirnê Hez Dikin.



Peyadeyên Ordiya Sor Balafireke Dijmin Didin Ber Derbên Tifingên xwe.



DEPOXANEKE INGILÎZÎ A MEZIN JI BONA BOMBEYÊN BALAFIRAN.

## Şîn

*Li ser giyanê MEHEMEDÊ SEYDA*

Buhara umrê ciwanî bê gul û çîçek hat îsal.
Movîka dara xortanî ne bişkuvî bûye zewal...

Ev çi xewa yekcarî bû ku destê te ji me qetand,
Xwezî te zanî ba xwezî, li dû em çend bûn melal.

Ji bo giyanê te çiqas şîn û girî bit hêja ye,
Muxabina ciwaniyê, bejin zirav, xortê delal.

Wefakarê hevalên xwe , welat-parêz bi rastî,
Di dinê de min hêj ne dît, ji te çêtir, qenctir heval.

Selavê min ji dûr li gorina te û çayê Cûdî
Û ji zemzem pîresteştir çemê Dîclê ava zelal...

Heger tu hesretkêşê bav û biran î di bin axê,
Ez jî li ser dinê tenha mame, ji dil tên nale nal...

Bira çavê te li dinê ne zîvire, zînhar, bira!
Giş fanî ye, bê dawî ye, poşman me be bavê Cemal.

Heger carekê tu mirî rojê sed car em dimirin,
Ji ber cewrên çerxa felek, êdî em bûne gêj û lal...

Ev jiyînê derbiderî mirin sedcar jê çêtir e,
Esaret û bendeganî miletê me kir bêmecal...

Heke tu kanî bî bi navê xortan ji Xwedê bipirs,
Bi gilî û bi gazinan bibêj «êdî bes e ev hal».

QEDRÎ CAN

Sal 1 — Hejmar 19

# ROJA NÛ

Duşemb 6 Îlon 1943

Kiriyariya Roja Nû, ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

## ÇENG & SIYASET

# DEWRAN

DESTPÊKA VÎ ŞERÎ

Li yekê îlonê çar salên vî şerî timam bûne û ev şerê xedar û xwînxwar hêj dom dike. Hin dibêjin îsal, hin dibêjin sala ko bê wê biqede.

Wezîrê Brîtanya Mezin ê yekemîn Mr. Çorçil gotiye. li ser dawiya şerî texmîn û hisab bê feyde ye.

Berî çar salan ev şer çawan destpê kir.

### Şerê Polonyayê

Li 1-ê îlonê sala 1939-an de, piştî nîvê şevê, li saet 4 û 30 deqîqan de refên elemanî ji nişka ve bi ser erdê Polonyayê de girtine û şaristanên Rumia, Puk, Gdynia Grudziadz, Torun, Sojnise, Tozew, Lodz, Katowiç, Krakov, Lwow, Tarsoyî û gelek bajarên din bombardiman kirine.

Şeva ko 31-ê tebaxê digihîne yekê îlonê, refên elemanî li Westerplatê xisti bûn.

### Leşkerên Elemanî

Ji axa Pomeranya —Germanî, Prusya-Rohelatî, Silezye, Moravya û Slovakyayê ketine erdê Polonyayê, û pêş ve meşiyane.

### Li 2-yê îlonê

Û heta 17-an. di nav bira eskerên elemanî û polonî de,yên ko xwe ber bi Varsovî, ava Vistulê, Brezek û Lwowê ve bi şûnda dikişandin şerine no çêbûne. Ordiya elemanî ji a polonî zehf xurtir bû.

Gelîltangên elemanî ên xurt bi arîkariya balafirên elemanî yên zirhkirî, Stukas—yên ko bi serîkî direjî armanc û hêjagehan dikin—diketin nav bira Ordiyên polonî û ew ji hev û du kut dikirin û pê tevger û tertîb tevlîhev dibûn.

Serdariya polonî ya ko xwe ji bona şerekî wilo çak pêk ne anî bû,—şerê birûskin—di karê gerandina Ordiyan de şaş bû.

Li 7-ê îlonê piştî şerekî zor û xwîndar Westerplat xwe avêtiye bextê dijmina.

### Li 17-ê îlonê

Yekîneyên Sovyetî ketine axa Polonyayê û di Polonya Rohelatî de pêşve çûne, ji Dzwîna û heta Dniestrê.

Lê hêj esker û Ordiyên polonî yên Varsovî, Modlin, Lublin, Lwow, Plesî, Oksiwî û khergirava Helê di pêşiya elemana de pê didan erdê û bi çavsorî şerî wan dikirin.

### Li 21-ê îlonê

Ji ber ko cebilxana wan xelas bûbû bendera polonî a eskerî Gdynia çekê xwe daniye û ketiye deste elemana.

### Li 22-yê îlonê

Ji sê aliyan Ordiya elemanî û ji alîkî Ordiya Sor dora Lwowê girtibûn, li ser wî Lwowê jî dest jî şerî kişand.

### Li 28-ê îlonê

Peyivên teslima payeteytê Polonyayê Warsovî destpê kirin; Warsovî bûbû kavil û xerabezar, di hundurê bajêr de av û xwarin nema bû; esker bê cebilxane...

### Li 30-ê îlonê

Eleman ketine Warsovî û Medlinê.

Li 2-yê çiriya berî Khergirava Hel xwe avêt bextê neyaran. 4.000 eskerên polonî yên ko şerê parastina Helê kiribûn 4.000 eskerên elemanî hêsîr girti bûn.

### Li 5-ê Çiriya

Berî di nav bira leşkerên General Kleberg û qiwetên elemanî ên motorkirî de şerî dawîn çêbûye.

# ASEGEHA EWRIPAYÊ

## Ordiya Brîtanî 8 Di Erdê Italyaya de Pêşvê Diçe

LONDRE—A.F.I. Gava Hevalbendan digotin: emê rojekê pê li erdê Ewripayê bikin, propegendekarên elemanî qeşmeriya xwe pê dikirin û ne dixwestin kes qîma xwe pê bîne. Lê liştê ko General De Gol, General Jîro, Serekcimhûr Rûzwelt, Serekwezîr Çorçil digotin rast bû û ev çend roj in leşkerên Hevalbenda, Ordiya Brîtanî heşt û yekîneyên kenadî ketine erdê Italyayê û niho li wê, di hindurê Asêgeha Ewripayê de şerine zor û xwîndar destpê kirine.

# TEVDANA ESKERI

## Di Sariya Sibehê De, Der Saet Çar û Nîvan

Roja înê, li siseyê îlonê serê sibehê, Ordiya Brîtanî 8 pê li erdê Italyayê kiriye. Leşkerên Hevalbenda yên ko di bin emrê general Eyzenhower de ne, derketine erdê Italyayê. Qiwetên brîtanî û kenadî bi tevkariya qiwetên Hevalbendan ên behrî û hewayî ev tişt pêk anine. Qiwetên Hevalbenda di sariya sibehê de, li saet 4 û 30 deqîqan de dest bi êrîşa xwe kirine. Eskerên hevalbendan derketine erdên ko hember Mesînayê de ne, Hevalbenda beteriyeyên Mihwerê perîşan kirine û lal xistine.

LONDRE—R: Wezareta brîtanî a qiwetên hewayî elam dide: Şevêçûyî balafirên me torpîl reşandine behrên dijmina, ji aliyê din, bombeavêjên me balafirgehên elemana yên erdê Frense û Holendayê bombardiman kirine. Bombeavêjek venegeriyaye warê xwe.

# KAVIL & XERABEZAR

## Not û Şeş Hezar Ton Bombeyên Şewat û Teqandinê

LONDRE— Di nav sala şerê a çaremîn de, çekê brîtanî ê hewayî bitenê 96.000 ton bombe avêtine bajar û hêjagehên Germanistanê. Refên brîtanî 11.000 ton bombe avêtine Hamburgê, 9.000 ton Esenê, 8.000 ton Kolonyayê, 6.000 ton Duisburgê, 5.000 ton Dusseldorfê, 6.000 ton Berlînê, û 5.080 ton jî Nurimbergê.

WEŞINGTON— Wezîrê emerîkanî ê şerî kolonel Noks gotiye: Ji destpêka şerî û heta niha me seyekê waporên japonî bin av kirine.

LONDRE— M. Stramek Serekwezîrê Çekoslovakî elam daye ko Rusye û Çekoslovakya wextekî nêzîng de peymanameyeke arîkariyê mor bikin.

LONDRE— Bi awakî resmî didin zanîn: Meha borî refên brîtanî 19.000 ton bombe avêtine erdê Italya û Germanistanê, 16.000 ton ketine hêjagehên elemanî û 3.000 yên talyanî; çekê brîtanî di ser Ewripayê re 160 mekîneyên dijmina avêtine erdê; 381 balafirên brîtanî venegeriyane warên xwe.

# ENIYA BEHRA SPI

## Êrîşa Erdê Talyana Bi Serdestî Dom Dike

LONDRE—Xeberdoxekî ji Qerargeha Hevalbendan a Mezin li Efrîqa Bakurî gotiye: di erdê Italyayê de me ji xwe re qerargehek daniye.

CEZAYIR— Tête bawer kirin ko qiwetên Mihwerê di erdê Italya Nîroyî de, bi xurtî şerî Hevalbenda bikin. Zehf eskerên elemanî hatine wê erdê.

LONDRE— Şandiyarê radyoa Cezayirê ê emerîkanî duhî êvarê elam dida ko elemana bi awakî gelek xurt berberiya leşkerên Hevalbenda bikin

CEZAYIR— Danezaneke resmî elam dide ko qiwetên Hevalbenda ên behrî dema derketina leşkerên Hevalbenda erdê Italyayê bi her awayî arîkariya wan kirine.

CEZAYIR— Refên Hevalbenda pirên geliyên Brenerê ên rêhesinan bombardiman û xira kirine.

WEŞINGTON—Xeberdoxekî yê wezareta emerîkanî a şerî gotiye: Tevdanên eskerî di erdê Italyayê de li gora planên ko hatine danîn dom dikin.

# YANEY SERKEWTIN

## Dengê Jîndarî

Vê dawiyê rojnameya «Jîn», ew rojnameya kurdî ku li Suleymaniyê û bi destê şair û edîbê kurd Tewfîq beg (Pîre—Merd) derdikeve, li ser «Yaney Serkewtin» bendek pir hêja nivîsiye. Ji xwe, ji kovara «Gulavêj»—kovara kurdî—ya ku li Bexdayê bi qelemên gurûhek zanayên kurd derdikeve—li ser «Yaney Serkewtin», em hinek da bûn, agah kirin. Bi rastî ev civata zanistî ku ji zûda ve hatibû avakirin û qederekî xebata xwe sist kiri bû, vê dawiyê bi vîn û evîneke mezin daye ser armanca xwe û gavên ahengdar davêje.

Ev dengê fisûnkar û jîndar, ku ji dev û dilên paqij der tê, ewê zingara guhên nezanên kurd paqij bike... dilên şkestî tije hêvîbike...

Ev roniya ku ji meş'eleya zanistî .. ew meş'eleya ku zana û nejadperwerên kurd mîna Mîrza Emîn Zekî, Refîq Hilmî, Elî Kemal û Marûf Ciyawuk Beg kirine destê xwe,diçirise, .ewê tarî û dûmana ku bi ser welatê me de girtiye wenda bike.. Ewê wê mij û xumama ku li ser çayên Zaxros kon vegirtine, rake... û çavên wan kesên ku ji hezar salan minêkarê tirejek ronî mane, tije nûr bike..,

o o o

Vê paşiyê, di her jmarê «Gulavêj» de, em listeyekê bi navê bexşîşan dibînin ku comerd û camêrên kurd, her yek, ji civata xwe re çel, pênce, pênce û pênc dînaran pêşkêş dikin. Mala wan ava... rûyê wan spî be. Metelokek heye, dibêje: «Perê spî ji bona roja reş e.»

Îro, em—nejadê kurd—,di her meydanê de, bi her awayî li dûmane û kêm ketine. Divê em jî rabin ser xwe, dest bi dest, mil bi mil bidin ser riya jiyînê û bêdeng lê bi aheng lingê xwe bigihêjin daxwaza xwe... bi gihêjin armanca xwe...

QEDRÎ CAN

## HEWAREK

### Ji Xortên Kurdan Re

Gelî kurdan rabin helistin
Gelî xortan rabin bi dest bin
Hûng in hemû piling û şêr in
Hûng kî ne, biken hinêrin
Kurdino nivistinê neken
Yêketiya xwe bîr neken
Ew Kafir in xurtî diken
Evîniyê ji me diben
Ixsîro dikey hewarê
Kes niye bête hewarê
Şêro rabe nîvê şevê
Destê xwe pavê xencerê
Bêjê ev e roja min e
Xewa şîrîn ne bo min e
Xewa şîrîn ne bo min e
Çi bikem Kurda nine min e
Roja Kurda di her hebît
Roja mêra di her hebît
Evro, ew roj serbilind bît
Ev ro. ew ro kuştin dibît
Nefî û kuştin bo mêran e
Mîrê me her Kamiran e
Em hivyekê Xudê dikeyn
Mîrê me mîrê kurdan e.

SELAHEDÎN REŞÎD ŞAHÎ

# DEMA NIHA

## XEWNEKE XWINDAR

### Bihayê Ko Italyayê Ji Bona Xewnekê Daniye

LONDRE — R : Piştî ko di nav sê salên şerî de milyonek talyan hatine kuştin, niho xelkê Italyayê dibînin ko leşkerên Hevalbenda derketine erdê wan. Tê bîra xelkê ko li 10—ê hizêranê 1940—î gava Musolînî di şehnişîna Qesra Venizê de dipeyivî, nav di miletê xwe dida û digot ko nav bira Italya — Frense û Brîtanya Mezin de şer e û Bi ser ve zêde dikir :

Armanca me yek e ; vegirtina erdine nû !!...

Lê serxweşiya talyana zehf dom ne kir û pey hev û du Efrîqa Rohelatî, Hebeşistan, Libye, Treblis Xerb û Sicilye ji destê wan çûne, û niho leşkerên Hevalbenda pê li erdê talyana bi xwe kirine. Italyayê çavê xwe berda bû erdên miletên din, lê îro 1.306.000 mîl çargûşe erd bi 14 milyon rûniştiman ji destê wan xelas bûne, 2.400.000 ton mezin waporên talyanî hatine bin av kirin.

Musolînî digot; 8 milyon şerevanî, nobetdarên Italyayê ne; lê îro Italya bûye xulamê elemana û bindestiya wan dike.

# 1.000 TON BOMBE

### Berlîn Ji Nû Ve Hatiye Bombardiman Kirin

LONDRE—R: Wezareta Brîtanî a hewayî dide zanîn: Şevêçûyî refên brîtanî ji 1.000 tonî bêtir bombe avêtine hêjagehên payetextê elemana; bombardimana Berlînê bîst deqîqan dom kiriye. Refên Hevalbenda ên din, li erdê Renanê û li balafirgehên Frensê xistine, û torpîl reşandine behrên dijmina; zehf nêçîrvanên neyar hatine avêtin erdê 22 bombeavêj venegeriyane warên xwe.

## SERFIRAZIYA HEVALBENDAN

### ŞÊ HEZAR HÊSÎR HATINE GIRTIN

CEZAYIR—R: Qerargeha Hevalbendan a mezin li Efrîqa Bakurî dide zanîn: Pêşveçûna yekîneyên brîtanî û kenadî di axa Italya Nîroyî de bi serdestî dom dike. Leşkerên Hevalbendan 10 bajarên talyanî standine û 3.000 hêsîr girtine.

### STALINO BER BI KETINÊ YE

#### ORDIYA SOR GIHAYE DERGEHÊN STALINO YÊ

MOSKÛ—R: Bi awakî resmî didin zanîn. Ordiya Sor gihaye dera ko 5 kîlomêtir di rohelatê Stalînoyê de ye. Di axa Donetza jêrîn de şerine xurt dom dikin. Eleman di teveyiya vê eniyê de xwe bi şûnda dikişînin. Qiwetên rûsî nemaze selefên siwaran dane pey elemana û pêş ve tên.

# DÛRIK

### DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

#### SÎNEMÊ

Keçka gunda Sînemê
Tu xeyidî li wê demê
Şayî li dewsa xemê
Roja şay û daweta
Ez kilê çavê te me.
Keçik rîhana l'aviya
Sînem rîhana l'aviya
Te dî bû l'ser xaniya
Tena jtena dimeşiya.
Mi dest avêt gerdenê
Bi ser mi de ditewiya.
Weke kewanê li bûçiya
Xuşîn ket toq û beniya
Keçka gunda Sînemê.
Tu xeyidî li wê demê
Ez mehbûbê dilê te mê
Eman ne man Sînokê
Bejin terha bihokê
Memik kirin wek gilokê
Ez l'benda te mam şev û rokê
Ezê Sînem birevînim
Ezê bibim deşta Xarokê.

#### SINCÊ

M' Sincê dî li ber berana
Ez xulam dev û dirana
Heb lûlê li nav mircana
Lê ne ma lê Sincê
Diran hebê birincê
Gulî gihane kolincê
Lê eman lê Sincê

M' Sincê dî bû li ser Xênê
Eqlê xorta difirênê
Lê ne man lê Sincê
Gulî gihane kolincê
Ramûsanê te xweş bûn
Ser kehnika Eyinsincê
Lê ne man lê Sincê

M' Sincê dî bû li nav rezan
Tu binêr li qolan u qezan
Ez çûm rûke sor bi gezan
Lê ne man lê Sinçê
Ezê Sincê birevînim
Bibim Welatê Çerkesan.

#### YADÊ

Delîlê Yadê
Ez mêr na kim
Mêr tu nîne
Ez axa na kim
Zilmê û qayîşê dikişînê.
Ez şêxa nakim
Erê şêx in
Cilê wan şîn e
Qelbê wan reş e
Wek tenî ne
Ez şivana na kim
Tim daw û dêlê wan
Bi herî ne.
Ez gavana na kim
Timî ling qelişî ne
Ez mela na kim
Tim bi qelem û dewêtkê
Qayîşa xwe dikişînin.
Ez dowilmenda na kim
Mal genî ne.
Ez feqîra na kim
Li ser çavê xwe na gerînin.
Ezê dakevim binê
Beriya jêrî
Yekî erebê çeng sipî
Ji xwe re bineqînim
Bila mêra bikuje
Gelha li mala bavê min
Vegerînê.

#### KIRÎVÊ

Nisêbînê bi qişle ye
Hê lê kirîvê
Gul û rêhan tê de ye
Meskenê min û te ye
Kêf kêfa min û te ye.
Gundî û maliya çi ji me ye
Ya sitar bê lome
Çi gundê bi lom e.
Nisêbînê bi tehtik e
Sola kirîvê bi kabik e
Kengê mêrê kirîva min bimirê
Kirîvê wez min bike
Nisêbînê bi av e
Siwar û peya da nav e
Hewşa kirîvê min bi giha ye
Lê lê kirîvê
Mi çîne te ba daye,
Şêx û mela lê paldaye
Şing û berê te gewr in
Wek xurmayê li Bixdaye

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## COTKARI—ZAD & XWARIN



*Ji bona mirovên bi zirav, ji bona mêrxasên ko ji milet û welatê xwe hez dikin tu tişt ne zehmet e, tu tişt ne giran e, tu tişt ne bê imkan e. Xelkê Brîtanya-Mezin bi vên xebat û eşqawelêt nav û deng dane. Gava vî şerê mezin û xwîndar destpê kir, elemana bi noqavên xwe, û bi hiner û çavsoriya xwe di Behrên Ci-*



*hanê de, waporên ingilîzî xistin tengiyê û pê dixwestin xelkên giravên Brîtanî ji birçîna bimirînin. Brîtanî ji alîkî, di Behrên dinyayê de şerî noqavên elemanî dikirin û dixebitîn da ko behrên cihanê ji wan paqij bikin û ji aliyê din dest bi cotkariyê kirin. Tov hatiye reşandin her bostên axa Ingilistanê û wan pê zad*



*û xwarina xelkê, 47 milyon peyda le'min kirine. Gava li dora wan de şer reş bû ew reştir bûne û tiştên ko zehf pispor û mopîzanan digotin çênabe pêk anîne. Xebat şêr e dest avêtê dibe rovî. Dil û xebat hebe, mêranî û fitaktî hebe, her tişt çêdibe û bi tenê dilê tirsok sînga gewir na bîne.*

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

1ère ANNEE | LUNDI 6 SEPTEMBRE 1943 | NUMERO 19

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Quatre ans, jour par jour, après l'entrée en guerre de la France et de l'Angleterre, pour la première fois, les armées de terre alliées portent le combat sur le continent européen.

Depuis 11 mois, avec une continuité sans revers, les armées de la victoire refoulent, presque sans reprendre haleine, l'ennemi vers sa tanière. La grande marée déclenchée par Hitler en est à son reflux qui, avec la rigueur d'une loi physique, recouvrira bientôt la plage de départ.

Nous sommes maintenant dans la deuxième phase de l'offensive terrestre alliée, la phase décisive, celle de la «reddition sur champ de bataille».

Précédé d'un violent tir de l'artillerie du secteur de Messine, de non moins violentes attaques de l'aviation contre les positions de Reggio et d'actions de commandos et de parachutistes, l'établissement de la première tête de pont sur le point extrême de la Calabre s'est développé très rapidement et aujourd'hui les troupes britanniques et canadiennes tiennent solidement une cinquantaine de kilomètres de terrain du sud de Reggio au nord de San Giovani. Le ravitaillement se fait à une cadence rapide à travers le détroit de Messine sous la protection absolue de la marine et de l'aviation.

La situation paraît précaire à l'Etat—Major allemand, puisque déjà les radios de l'axe préparent l'opinion à l'évacuation du Sud de de la Péninsule. Il est certain que le problème des communications, après les bombardements destructeurs des noeuds ferroviaires de l'Italie, y compris les ouvrages d'art des lignes qui descendent du Brenner, doit paraître plutôt insoluble au Commandement allemand. Il est probable, d'autre part, que ces premiers débarquements sont le prélude à d'autres opérations combinées et il est à prévoir, comme le laissent déjà entendre les communiqués que la population et l'armée italiennes interviendront assez vite pour ne pas favoriser, et même pour gêner, les plans de la défense allemande.

Du côté des côtes française et belge, depuis quelques jours les attaques des bombardiers britanniques ont connu une intensité décuplée sur les aérodromes et voies de communications, Devons—nous nous attendre à de grandes opérations de débarquement là bas aussi? Dans un mois, les conditions atmosphériques seront plus dures et maintenant la lune est dans une phase favorable. En tout cas, si nous pensons à une telle possibilité les allemands eux aussi doivent y penser et si un grand espoir est de notre côté, de leur côté les sentiments doivent plutôt tenir de la panique.

D'autant plus, qu'aprés Hambourg, Berlin vit aujourd'hui des nuits d'épouvante et que les nouvelles du Front de Russie, où la défense allemande craque sur tout le front de Smolensk à la mer d'Azov, ne doivent pas contribuer à relever un moral déjà fortement éprouvé par ailleurs.

D.

## Les DEPECHES de la NUIT

*A l'occasion du 4ème anniversaire de la guerre, le Comité Français de la Libération Nationale a lancé un manifeste dont voici la conclusion: «Les invincibles armées alliées tendent la main à leurs frères des pays conquis, dont la résistance, en dépit de la faim, de la terreur policière et des pelotons d'exécution, est l'une des conditions de la victoire totale.»*

*Nous voici arrivés à une étape décisive de la guerre. Le 3 Septembre 1939, la France et l'Angleterre présentaient devant l'ennemi de l'Europe la force de leurs armes et la faiblesse de leurs âmes. En ce moment, c'est par la force conjuguée de leurs armes et de leurs âmes que les Alliés se lancent à l'assaut de l'ennemi et préparent la resurrection de l'Europe.*

*A l'avant-garde de cette coalition se trouve la 8ème Armée, la grande armée britannique qui, voici 10 mois semblait piétiner aux portes d'Alexandrie. dont chacune des campagnes était accompagnée des armes et des couleurs de la France, et qui, à l'un des plus sombres moments de son histoire, devait aux Français de Bir Hakim une part de son salut.*

*Sur le sol de l'Europe, à l'heure où les peuples asservis rompront leurs chaînes qu'ils n'ont jamais cessé de secouer, un rôle exemplaire, qui sert de rappel à toutes les nations. appartient à celle qui est entrée la première dans le martyr de la guerre totale au moment où Goering lançait sans préavis sa «Lüftwaffe» sur 500 villes et villages de Pologne. 3 millions de polonais — chrétiens et juifs — sont tombés, victimes des massacres, torturés à mort, tués par la famine et les épidémies.*

*Mais ce ne sont pas les seules victimes qui établissent la logique de la haine, Plus la Pologne saigne, et plus la Pologne combat. Et c'est une leçon, en même temps qu' un présage que l'honneur et la resistance de la Pologne et de la France se soient mutuellement imités et conjugnés!*

*C'est parce que les Prançais ont descendu 400 avions allemands. C'est parce, qu'il y a eu ceux du «Surcouf» et ceux du «Richelieu» c'est parce qu'il y a eu Pont-du-Fahs, le Fezzan...que la France qui avait perdu une bataille, n'a pas perdu la guerre.*

*C'est parce que les Polonais ont tenu à Tobrouk au moment le plus dur, c'est parce que le pavillon polonais n'a jamais cessé de flotter sur tous les océans, c'est parce que les Polonais ont participé à 575 raids et déversé 7.000 tonnes de bombes sur les territoires ennemis, que la Pologne a perdu une bataille mais qu'elle n'a pas perdu la guerre.*

*Et que dire de la bataille intérieure? Sur le sol français, en étroite liaison avec le Comité de la Libération, fonctionne le Conseil de la Résistance où sont representés les deux grandes organisations syndicales. La Confédération Génèrale du Travail, et la Confédération Française des Travailleurs Chretiens et 6 grands partis français: la Fédération Républicaine, le Parti Communiste, le Parti Socialiste, le parti Radical et les Démocrates Populaires ainsi que les groupements suivants; Combat, Franc-Tireur, Libération, Front —National, Ceux de la Résistance, Ceux de la Libération....*

*Hitler avait dit: «Je ferai l'Europe.» L'Europe se fait contre lui.*

## LA CRISE DES EFFECTIFS ALLEMANDS

Le Haut Commandement de la Wehrmacht se voit acculé à un terrible dilemne. Comment répartir les forces dont il dispose pour défendre efficacement l'Europe menacée? Quelles forces faut-il à Hitler pour protéger sa soidisant «Forteresse», A l'Est, les réserves mobiles qu'il utilisait pour combler les vides sont épuisées. Il en possédait encore pendant l'hiver dernier quand le Général Von Manstein lançait 20 divisions dans la bataille pour sauver KHARKOV. Aujourd'hui Hitler n'a plus de réserves mobiles. Il avait engagé les deux tiers de ses chars pour mener rapidement à bien son offensive de KOURSK. Ses divisions blindées ont depuis subi de terribles pertes dans la formidable bataille de matériel qui fit rage par la suite,

Tout ce que l'Allemagne peut faire aujourd'hui c'est de renforcer les unités qui se battent sur un secteur en affaiblissant les effectifs qui luttent sur un autre· Mais ceci est presqu'impossible parce que la Wehrmacht doit actuellement faire face à trois offensives majeures dans trois secteurs différents, et tout porte à croire que l'avance soviétique — tout au moins dans le secteur méridional — est irrésistible.

Les autres fronts de l'Allemagne ne sont pas moins menacés. Si Rome est vraiment déclarée ville ouverte, toute résistance au Sud de la Capitale devrait s'arrêter automatiquement, car on ne pourra plus ravitailler la partie méridionale de la péninsule si le trafic par Rome est suspendu.

Le reste des trois divisions allemandes qui se battaient en Sicile pourra péniblement se retirer vers l'Adriatique en abandonnant presque tout son précieux matériel. En admettant que l'Italie soit perdue tôt ou tard pour l'Allemagne il faudra au moins 10 divisions pour protéger la frontière autrichienne et le bassin danubien des Alpes. 5 autres divisions seront nécessaires pour défendre les Alpes occidentales qui ferment l'accès de la France. Il faudra au moins 10 ou 15 divisions allemandes pour remplacer les garnisons d'occupation italiennes dans les Balkans, ces Balkans qui doivent être défendus à tout prix parce qu'ils représentent une porte d'accès importante vers l'Europe.

Hitler devrait donc disposer d'une trentaine de divisions pour garder son front sud. Quelles sont les réserves au sein desquelles il peut puiser ces effectifs? En Allemagne, il n'y a pour ainsi dire plus de divisions de première ligne, en réserve. Les 40 divisions stationnées en France, en Belgique et en Hollande et qui, en partie, ne sont composées que d'effectifs réduits, sont indispensables à la protection de ces territoires. Il y a encore 10 divisions allemandes en Norvège et 7 en Finlande. La presse suédoise a beaucoup parlé ces temps derniers d'un transfert probable de ces 17 divisions. Peut—être que l'Etat—Major allemand sera contraint d'avoir recours à cette mesure, mais s'il en était ainsi, il porterait atteinte non seulement à son prestige, mais à une position stratégique importante.

En dégarnissant le nord de l'Europe ces régions seraient instantanément menacées d'une invasion alliée. Les sous-marins ennemis perdraient des bases d'opération vitales. La Finlande sera vite obligée de mettre bas les armes, ce qui équivaudrait à l'effondrement du front de Leningrad, front qui est le plus rapproché du territoire allemand proprement dit.

Même si l'Allemagne se décidait à avoir recours à toutes ces mesures, elle ne libérerait que la moitié des effectifs dont elle aurait besoin pour défendre le front méridional. Même dans ce cas là l'Allemagne ne pourrait pas passer à l'offensive dans le sud. Elle pourrait à peine résister efficacement aux offensives de plus en plus violentes déclenchées par les Alliés.

## POEME KURDE

### L'ABEILLE

Cherchant la liqueur enviée, l'abeille
Caline la rose, au corail embaumé
Descendant à la plaine,
Survolant les sommets
Sur les traces du soleil.
Le papillon suivait son vol énivrant
Par dessus les eaux à l'allure lente
Courant
Comme le vent,
Sur les pentes
Des ravins,
Irritant la tête comme le vin.
Chuchotant des mots
Aux oreilles des fleurs,
Animant la gaîté
Et apaisant les pleurs.
C'est le soir,
Le royaume des flèches noires
Fatiguée des couleurs,
Dégoutée des douceurs
A pas lents,
Comme un sultan,
Sur les lèvres un sourire méchant,
L'abeille rentre des champs,
Et le papillon se perd dans les bois
Comme dans la gloire
Se perdent les forts et les rois.
L'abeille alors dit
D'ùn ton maudit
A la muse : fleur,
Ton poète est attristé par tes pleurs!
Tu es l'attente, l'espérance,
La résonnance—
Moi le mouvement, le geste;
Mon chef—d'oeuvre c'est le miel..
Toi.. tu es le reste.
La reine des fleurs pâlit
—Comme ces femmes
Au bonheur perdu
Qui passent dans les rues —
Entre les feuillages drus,

DR. BEDIR KHAN

## LA PRESSE KURDE

*Nous signalons, à nos lecteurs s'intéressant au mouvement culturel KURDE, les journaux et périodiques kurdes suivants:*

**RIYA TAZÉ** organe des Kurdes de l'U.R.S.S paraissant à Erivan.

**GALAWÉJ,** la plus grande revue littéraire kurde, parait chaque mois à Bagdad, avec 80 à 100 pages de texte

**JIYAN** hebdomadaire politique et littéraire, paraissant à Soulemanié.

**HAWAR,** revue littéraire bi-mensuelle paraissant à Damas. Textes kurdes et français.

**RONAH** Revue mensuelle illustré, paraissant Damas.

*Provisoirement,* LE JOUR NOUVEAU *paraîtra une fois par semaine, le Lundi.*

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞITIYÊ

## EVE EMERIKE

Emerîka wextekê di bin penaha Ingilistanê de bù, lê li 4-ê tîrmehê sala 1776-an de piştî şerine no, xelkê Emerîkayê ingilîz ji Emerîkayê derêxistine û bûne bi serê xwe, dewleteke misteqil.

Bi vê hêncetê di Emerîkayê de bangînek hatiye belav kirin, jê re



Bangîna bi ser xwe bûnê dibêjin, tê de hatiye gotin: Heqê hemî însana wek hev e; di pirsa heq û edaletê de mezin û piçûk, belengaz û dewlemend nîne, azahî û serbestî heqê her kesî ye, di pêşiya her kesî de dergehên zanîn, ilm û hi



ner, xebat, bextiyarî û kamiraniyê vekiriye, û divê vekirî be.

Miletî divê hikûmeta xwe, lebatên Civatmiletê xwe, bi serbestî û li gora daxwaza xwe bibijêre û her wekî milet dil dike divê karên milet bêne gerandin. Mezinahî li miletî tê.

Emerîke çawan giha azahî û serbestiyê?

Naîb û Nimînendeyên sih wilayetên Emerîkayê ên hêja û wetenperwer yên ko dizanî bûn milet çi dixwaze, gihane hev û civanek danîne û di vî civanî de Bangîna Istiqlalê hatiye nivîsandin. Bi vê bangînê xelkê Emerîkayê yekdil û yekziman ji Ingilistanê re didan zanîn ko miletê emerîkanî dixwaze hikûmeta xwe, xwe bi xwe, bi bijêre ango ingilîza divê êdî têkilî şuxlê wan ne bin,

Lê Ingilistanê ne dixwest ev wilayetên hêja ji destê wê derkevin û li ser wê, miletê Emerîkanî ji bona serbestî û istiqlala xwe, şerî ingilîza kirin.

General Corc Weşington ko emerîkanî jê re «Bavê Welêt» dibêjin, rêberê miletê xwe bû. Emerîkanî bi mêranî şer kirin û tê de serfiraz bûn.

Piştî ko Emerîka giha serbestiyê, ew 30 wilayet destê hev û du girtine û hîmên dewleta emerîkayê danîne. Herwekî Emerîka welatekî aza û serbest, rahet û zengîn bû, ji her aliyên dinyayê û —ji Kurdistanê jî— zehf xelk hatine Emerîkayê, tê de xebitîne, bûne xwedî mal û milk û hêdî, hêdî Emerîka giha xurtiya xwe a îro.

Ji xwe welatên ko xelkê wan zana ne, îşê milet li gora hikmên qanûn û edaletê têne gerandin, xelk bi zilm û zorkeriyê qîma xwe nayênin, heqê xwe nasdikin û ji bona azahî û serbestiya xwe bi isûl û tertîb dixebitin û ko hewce bû hemî pev re, şer û berberiya zalima dikin, her û her çêtir û mezintir dibin.

### Emerîka Çawan

Tête gerandin? Di Emerîkayê de girtin û berdan di destê milet de ye. Ji xwe bingeha demokrasî ev e. Bê ko piraniya miletî bêje, erê,, wisa baş e, qanûn nikarin bêne danîn, ji xelkê pere, wêrgû nayîn standin. Hikûmet tiştê ko piraniya miletî na xwaze, ni kare bike û her wekî milet rast bi rast bi wan tişta ni kare mijûl bibe, ji nav mirovên aqil, xwedî exlaq, hişyar, xebatker, ewle, zana, mêrxas nimînendeyan dibijêre, ew nimînende, di civatmiletî de kom dibin.

Civatmilet dev û zmanê miletî ye. Lebatên civatê Serekdewletekî dibijêre û Serekdewlet jî, lebatekî ji lebatên civatmiletî dike Serekwezîr, û bi destê wî wezaret têne danîn. Heke civatmiletî rojekê çîma xwe bi lebatên wezaretê ne anî wezareteke nû têne danîn.

### Xelk û Bajaran Emerîkayê

Nîvê xelkê Emerîkayê di bajarên mezin de rûdinin. Di Emerîkayê de 92 bajar hene ko rûniştimanên heryekî ji wan ji 100.000-î bêtir in.

Payetextê Brîtanya Mezin Londre şaristana Dinyayê a mezin tir e; tê de 9 milyon xelk rûdinin, piştî Londrê Nû-York tê, li wê heft û nîv milyon peya rûniştîne.

Ji bona zaroyên xelkê Nû-Yorkê 700 dibistan hatine ava kirin. Rûyê erdê vî bajarî 310 mîl çar güşe ye. 39 avahiyên Nû-Yorkê bi 38 tebeq in. Avahiya bilindtir Empeyir Stêt Bilding e, 102 qatên di wê hene û ev avahî 1265 pê bilind e.

Riyên Nû-Yorkê fireh, mezin û paqij in, û heft û nîv milyon xelkên Nû-Yorkê di saya hiner û zanînê de, di vî bajarî de bi xweşî dixebitin û kêf dikin.

## DI, WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

*Nivîsevan* *Grigori Petrof* — 13 — *Wergerandok:* *Qedrî Can*

Xwedê kir, ku jiyîna qişlê ew îslah kir....

—Wî, ev rutbe, ji qişlê stend. Di leşkeriya xwe de bi namûs, jêhatî, xebatkar û bi nezaket bû....

Armanca leşkeriyê wisan hate nas kirin.... Ji bo vê yekê zabitên Fîn ên xort, ji bo bigihêjin hêviya xwe, li reyên nêzîk û awayên qenc geriyan.

Ji îro pêve zabitan, li hemberê neferên xwe, awayê rêveçûna xwe guherandin, mîna berê, bi çavê kêmasî li wan mêze ne kirin.

Di zemanê Îsweçan de, qişle tije gemar bû, ne dihate rûniştin. Hewa wê, tim genî bû... cilên neferan ne baş bûn... Ji ber xwarinên neqenc pirê wan birçî diman û ne xweş diketin... Ji ber ku serek û zabitên wan, heqê wan dixwarin. Li neferan qenc mêze ne dikirin. Di qişlê de kîjan kufrê ne baş bû, bu bû adet.

Nuha her tişt, ji kokê hate guherandin. Qişlê, paqij bûn... dîwarên wan hatine spî kirin. Bi vekirina pencereyan, hewa hate nuhkirin... di çîmenan û qafikan de, çîçek hate çandin. Li pencerê qişlan de perde bi darve bûnkî biba, gava diket hundirê qişlê, pêlavê xwe li ber derî paqij dikirin. Nefer bi xwesta, ne xwesta, diviya bû, di serşoka qişlê de, her roj xwe bişo. Nefer her wekî bi laşên xwe hatin paqij kirin, bi çanên xwe bi exlaqên xwe jî paqij bûn.

Di zemanê serdestiya Îsweçan de ev pirsên ha bû bûn metelok

—Mîna Îsweçan serxweş...

—Nola neferê Îsweçan çir (kufir) dike...

Di zemanê Îsweçan de nefer bi tevayî serxweş bûn. Tu çîr ne diman ku ne dikirin. Neferan çîrî hev dikirin. Paşan jî, ji hev re gotinên pîs digotin. Gava ji hev hez dikirin, gava bi hev re şer dikirin pêda û bê perwa ji dê, bav û xwehên hev re... Ji Îsa.. ji roj ûezmanan re, çîrên giran, dibarandin.

Zabitên Fîn ên xort; sabûn xistên qişlê... sibê, êvarê piştî xwarinê, destên leşkeran bi wan dan şuştin.., peşgîrê paqij dane wan... Ji ber leşkerî re firçake diranan dan û ew hînî diran paqijkirinê kirin... piştî paqijkirina diranan, paqijkirina zman jî hînî wan kirin. Zabitan qet çîr ne dikirin... li hemberê leşkeran sert bûn... bê çîr û xeberan inzibatek rind di nav wan de çêdikirin,

Berê, ne tenê leşker û zabitan, her kesî çîrkirin hunerek dizan bûn... di qişlê de çîrkirin, çêşîdekî mêranî û qehremaniyê bû. Zabitên Fîn ên xort, qişle bi awakî din kirin û gotin:

—Qişle, kûreya malbata me ye.„ Ji bona papas:dêr, ji bona mamostê: dibistan çi ye ? Ji bona me jî qişle ew e.

Di vir de, ji civata jinan bêtir, divê em terbiye û nezaketa xwe biparêzin. Zabitan bi dest û bi zman ev tişt ji leşkeran re îspat dikirin:

—Qişlê, mekin meyxana serxwaşan û kufirxane... Tû mekin erdê... Zemînê wê gemarî mekin... Bi çîran hewa qişlê berbad mekin... Zmanê xwe paqij bigirin... Guhê hevalên xwe zingarî mekin... Çîrên pîs û kirêt, ji reyandina sehan xerabtir e. Çîr, nîşanên nezaniyê ye. Heke hûn dixwazin mêraniya xwe nîşan bikin çareyên mêrxasiyê pêda bikin...

—Bi sporê mijûl bibin... avjenî, bi navê lîstin û xwe çenkirinê hîn bibin. Di civatan de peyvê nazik bibêjin... Kitibê bê fêde mexwînin... herçî hûn dixwînin, di nivîsin û dibihfzin ji bîr mekin.,,

Sal 1 — Hejmar 20

Duşemb 13 Îlon 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## DEWRAN

### ITALYAYÊ

### Ji Şerê Xwe Kir

10 HIZÊRAN 1940.

Italyayê dît ko Frense ket erdê, wê bawer kir ko miriye, rabû li pişta wê xencrek xist û pê di nav bira talyan û Frense—Brîtanya Mezin de şer destpê kir.

5 GULAN 1941.

Erdê Efrîqa Rohelatî ji destê talyana çû.

10 GULAN 1943.

Talyan û eleman ji Efrîqa Bakurî hatine qewirandin.

10 HIZÊRAN 1943.

Girava talyanî Pantelariya, piştî bombardimanine xurt, xwe avêt bextê Hevalbendan.

10 TÎRMEH 1943.

Leşkerên Hevalbendan pê li erdê Sicilyayê kirine.

25 TÎRMEH 1943.

Musolînî istîfa xwe daye, Mareşal Badogliyo ket şûna wî û pê pişta fasizmî şikiya.

2 TÎRMEH 1943.

Serdar General Eyzenhawer silh teklîfî talyana kir, Badogliyo qîma xwe pê ne anî an nikart bû bîne.

2 TEBAX 1943.

Bombardimana erdê talyana ji nû ve destpê kir.

17 TEBAX 1943

Mesîne hatiye standin, û Sicilye bi timamî ket destê Hevalbendan û pê şerê Sicilyayê qediya.

3 ÎLON 1943.

Li 14 ê tebaxê civanê Kubekê — li Kenadayê — çêbû, Serekcimhûr Rûzwelt û Mr. Çorçil qerara vegirtina erdê Ewripayê dane û serfermandar û şerdariyên Hevalbendan planên eskerî ko pê girêdayîne danîne û li 3-yê îlonê vegirtina erdê Ewripayê bi derketina eskerên Hevalbenda Italyayê destpê kir.

8 ÎLON 1943.

Italyayê û Ordiyên di wê xwe avêtine bextê Hevalbendan.

### Dîrok An Çîrok

#### Hatin û Çûna Fesîstan

ÇIRIYA BERI 1922

Terefdarên Musolînî ber bi Romayê ve meşiyane, kralê talyana Musolînî kir serekwezîr û hikûmeteke fasîst hatiye danîn.

Musolînî xwe kir diktator, ango hemî qiwet û selahiyetên dewletê xist destê xwe; peyayên ko pê qail ne dibûn hatine girtin û avêtin zêndanan; û hinên wan jî hatine kuştin, û ev bê hikm û qerara mehkemeyeke bi isûl.

1926—DIKTATORÎ

Heqên miletê talyanî ên bingehîn; serbestiya gotin û axaftinê, serbestiya kovar û rojnaman, serbestiya civan û civatan, serbestiya bijartina naib û nimînendeyên miletî hatine rakirin; xweş an ne xweş bikêrhatî an nekêrhatî bi tiştê ko hikumetê dikir diviya bû xelk qîma xwe bîne û evtişt nexweş jî be devê xwe bigire.

1935—ŞERÊ HEBEŞISTANÊ

Ordiyên Italyayê bi emrê Musolînî direjî miletekî jar û mezlûm kir, û ket erdê Hebeşistanê: xelkê Hebeşistanê bi mêranî şerî talyana kirin, lê çek û posatên wan kêm bû, eskerên wan bê ta'lîm bû, tang û balafirên wan tu ne bû, şikiyane. Berî du salan bi arîkariya qiwetên brîtanî, talyan ji Hebeşistanê hatine qewirandin û Hebeşistan giha azahî û serbestiya xwe.

1932— MIHWER

Italya bûye dewletek ji yên Mihwerê.

10 HIZÊRAN 1940

Italyayê direjî Frensê kir, ji ber ko talyana baver dikirin, xwarin hatiye danîn sifrê.

ÇIRIYABERI — 1940

Talyana direjî Yewnanistana biçûk û bêmecal kirine.

Lê leşker û xelkên Yewnanistana biçûk û bêmecal, ji bono azahî û serbestiya Welêt mîna pilenga şerî talyana kirin û wan ji erdê Yewnanistanê derêxistine, talyan xistine tengiyê, firqeyên elemanî ên zirhkirı diviya bû bên hawara talyana.

1940—SÛDAN Û MISIR

Ber bi xelaseka sala 1940-î ve, talyana direjî Sûdana—Ingilîzî kirine, kitine axa Somaliyê û Misrê.

1941—1942

Talyan ji payetextê Hebeşistanê Adis—Ababayê û ji Somalilandê û Erîtreyê hatine derêxistin.

(Erdên Efrîqa Rohelatî)

1943—DAWÎ

Erdê Efrîqayê ji talyan û eleimana natiye paqij kirin, Musolîn ket, Erdê Italya Nîroyî hatiye vegirtin. Italyayê tevî ordiyên xwe, xwe avêt bextê Hevalbendan.

Çîrok qediyaye.

## BARVENKOVO-MARIOPOL

### Ordiya Sor Ev Her Du Bajar Vegirtine

MOSKÛ— Serfermandariya sovyetî dide zanîn: piştî şerine xwîndar, leşkerên sovyetî bi êrîşeke xurt şaristanên Barvenkovo û Mariopolê standine.

MOSKÛ — : Bi tevayiya dengan Mitran Sergius hatiye bijartin Petrîkê Moskovayê û hemî erdên ûrisa. Petrîkê nû di Kinîsa Aparisionê de wê rûne ser textê xwe. Heft lebatên civata Sinodê ji hatine neqandin.

## . HEJDE MILYON .

### TON WAPOR HATINE ÇÊKIRIN

WEŞINGTON— Ji wextê ko Emerîka ketiye şerî—7 ê kanûna paşîn 1941—î û heta niha destgehên emerîkanî 18 milyon ton mezin wapor çêkirine.

CEZAYIR— Radoya Frensê elam dide ko qiwetine Hevalbenda ên teze derketine Napoliyê.

PARÎS— Radyoa Parîsê duhî êvarê digot: di erdê Italyayê de şerine zor û xwîndar çêdibin; eskerên talyanî û elemanî li hev û du dixin.

LONDRE— Danezaneke ingilîz û emerîkanî elam dide: duhî bombeavêjên emerîkanî ên giran di bakur û bakur—roavayê Frensê de der neh deran hêjagehên dijmina bombardiman kirine. 15 nêçirvanên elemanî hatine avêtin erdê.

## ARIKARIYA FRENSIZA

### ROJNAMEYEN INGILIZI PESNÊ FRENSIZA DIDIN

LONDRE— Rojnama ingilîzî Teymis dinivîse: di tevdan û şerên ko di enîya behra spî de çêbûne û bi hilweşandina Italyayê, berên xwe ên hêja daye, leşkerên frensizî bi awakî gelek hêja arîkariya Hevalbenda kirine. Mancester Guardiyen dibêje: heke eleman dixwazin di erdê Italyayê de şerî me bikin, perîşan-ya wan hêj mezintir bibe. Eskerên ko ji xwe têrî hewcedariya eniyên ko niho têde şer çêdibin na kin, divê hêj bêtir bêne belav kirin. Eleman ne hinde xurt in ko li herderê bikarin xwe midafie bike. Payetextekê ji yên Mihwerê ala spî kişandiye; Mihwer hejiyaye.

WEŞINGTON—R: Balafirên Hevalbenda bêetlahî dadikevin balafirgehên erdê Italya Nîroyî. Êrîşa erdê Germanistanê û erdê Hikûmetên ko dane pey elemana wextekî nîzing de, ji wan balafirgehan destpê bikin. Bi xurtî tête bawer kirin, her wekî refên Hevalbendan Italya şkênandiye, bihna Mecaristan, Bilxaristan û Romanyayê jî biçikinin. Fenlandya jî wextekî nîzing de bêşik xwe bavêje bextê Hevalbendan.

## DANEZANA SOVYETI

MOSKÛ— Serdariya sovyetî duhî êvarê elam dida: leşkerên rûsî ber bi Pavlogradê ve şerî dijmina kirine, 10 û heta 12 kilomêtir pêş ve çûne û 70 avahîgeh vegirtine. Di roava û nîro—roavayê Stalînoyê de, Ordiya Sor zora elemana biriye û 10 û heta 15 kîlomêtiran ber ve hatiye; 40 avahîgeh ketine destên yekîneyên rûsî. Di bakurê Brianskê de jî qiwetên rûsî pişta elemana şkênandine, gelek avahîgeh û bajarên Karobino, Ivanovîçî, û Bitoşê standine. Di nîro—roavayê Xarkovê de lekên şerevaniyên sovyetî pêş ve meşinaye.

Du hezar kuştiyên elemanî li erdê mane. Refên Stola Sor di Derya Baltîqê de, waporeke dijmin a barkêş 5.000 ton mezin bin av kiriye.

## DANEZAN

CEZAYIR—R: Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî dide zanîn: Italyayê xwe avêtiye bextê me.

NÛ-YORK—R: Radyoa Nû-Yorkê elam daye ko Italyayê bê gotin û bazar xwe avêtiye bextê Hevalbendan.

CEZAYIR—R: Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî dide zanîn; Li ser emrê Hikûmeta talyanî Ordiyên talyanî xwe avêtine bextê me

#### Bangîna Eyzenhawer

CEZAYIR:— A.F.I. Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî dide zanîn: General Eyzenhawer, serdarê qiwetên Hevalbenda, gotara jêrîn belav kiriye.

Bi navê serfermandarê Hevalbenda min bext da Ordiyên talyana, û bi şertên vê bext danê Brîtanya Mezin, Emerîka û Sovyetistanê qîma xwe anîne. Tiştê ko min kiriyo bi kêrî Hevalbendan tê.

Hikûmeta talyanî soz daye û riayetî wan şertan bike. Destşerkişana ko di nav bira nimînendeyê min û yên mareşal Badogliyoyê de hatiye mor kirin, di cih de destpê dike.

Şer di nav bira leşkerên Hevalbenda û yên talyanî de hema disekine. Hevalbend arîkariya hemî talyana bikin yên ko ji bona qewirandina elemanên ta'daker ji welatê Italyayê dê bixebitin.

## ITALYA

### ERD-XELK-BAJAR

Rûyê erdê Italyayê tevî giravan 309.940 kîlomêtir car gûşe ye. Xelkê Italyayê 42.000.000 «çel û du milyon» in.

Di erdê Italyayê de sê çiyayên agirî hene: VEZU, ETNA û STROMBOLÎ. Şetên wê Po, Tiber û Arno ne. Giravên di wê ên mezin Sicilye û Serdinya ne.

Rome payeteytê Italyayê ye; rûniştimanên di wê milyonek e.

Bajarên di wê ên girane ev in: Jeniwa, Milan, Napolî, Turin, Palermo, Florens, Kataniya, Venedig Trîest, Bolonya û Mesîna.

### Zivistan û teşxeleyên di wê

MOSKÛ— Harold King, nûçegihayê Royterî yê ko di eniya Xarkov—Ûkranyayê de, li ba Ordiya Sor e, axaftina ko di nav bira wî û kolonel Ivan Vorobiev—serekê şerdariya General Konev, serdarê Ordiyên sovyetî yên eniya Xarkovê de çêbûye qise dike; Kolonel Vorobiev gotiye: di eniya Xarkovê de û der eniyên din şerê me xweş çêdibe. Lê pêşveçûna me heta Dnieprê tiştekî zehmet e, heyia vî hinpirs hene ko divên bêne safî kirin.

Wext ji her tiştî giranetir e. Em niho di meha îlonê de ne û heye ko der çiriya berî baranine xurt wê bibarin û pê erd û rê dê bibin têr herî. Her çend ji Ordiya Sor derbine dijwar daye Ordiya elemanî, ew ne ber bi şkênandinê ye. Bêşik eleman di Zaparojeyê de, ya ko tête hesibandin mîna mifteya hemî erdên nîroyî yên rohelatê Dnieprê, bi xurtî pê bidin erdê û ew di Qrimê de jî bi awakî zor berberiya me bikin. Êdî ji bona Ordiya Sor ne wext e ko dest bi êrîşine mezin bike.

## DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

*Nivîsevan* *Grigorî Petrof* — 14 — *Wergerandok:* *Qedrî Can*

Ji wan pêve, piştî standina tezkerê, wacibatên leşkerî çawan dibe û çawan dikarin ji welatê xwe re xebatê bikin, ji wan re didan zanîn û ji wan re digotin:

Ev cihê ku hûn ji wê derê hatine, merivê wê mîna xiltan dikevin bin qulikê axê; wan jiyîneke însanî ne dîtine, ne xwendine... ne bihîstine... Hûn jî mîna xiltan, ji wê derê hatin. Heke hûn jî, mîna xiltan herin, di nav xiltan de, di wan qulikan de bimînin, şerm e. Hûn, mîna nubeşirên jiyîna nuh vegerin wir. Ew canên însan ku di wan qulikên teng û tarî de di mînin, hûn hişyar bikin. Li wir ordiyeke nuh pêk bînin.., da ku ev ordû, bibe ordiya lihev-hatin, bê dengî û bajarî (medeniyet) ê.

Di ordiyan de hinek tabûr hene ku bi qehremaniya xwe nav û deng dane... ew, ji xwe re, navê tabûra mirinê didin... her kes jî bi vî navî, bivê nevê, ban wan dikin. Ewên ha, heke biqewime, hetanî neferek bimîne jî, ji mirinê rûyên xwe banadin. Evên ha, qehreman in.

Ji bona pêşveçûna welat: xebat,.. qandî mirina di ber welat de, bi rûmet e...

— Hûn zeviyan çawan diajon? Hûn genimê xwe çawan diçînin û diçinin!

— Hûn çawan ji şîrê heywanê xwe, ji êzingê çiyayê xwe fêde dikin?

— Mêrên we çawan bi jinên xwe re derbas dikin?

— Dê û bav, zarokên xwe, çawan mezin dikin?

Nuha werin, ji we re van tiştan, di nav miletên pêşdeçûyî, çawan çêdibe, em bidin fam kirin. Çima her kes ji qumaşê Ingiliz, ji camên Çekoslovakya, ji qonserwê masiyên Felemengê, ji mihînên Irlandayê, ji şeraba Frensayê, ji nîv-hişkê Danîmarqê, ji dantêlê Brûksêl, ji kurkên Ûrûs, ji karton û kîbrîtên Îsweçan hez dikin???

— Çima ku ev tişt li nav wan, bi awakî pir baş çêdibin. Hûn jî xeyret bikin, tiştên wisan di nav welatê me de çêbikin...

— Kî ewê van çêbike? Kî ewê çavê bav û birayên wî gundê we veke? Kî ewê xwe bigihîne nav cihê çirav û tenha.

Zabitên murebî û murşîd, ji leşkerên xwe ev pirs dikirin, û cewaba wan pirsan, dîsa wan bi xwe didan:

— Hûn!... Berî her kesî, hûnê çêbikin... wê gavê kufletên we, ji mayîna we ya qişlê tu tiştî xisar nakin... bêtir ewê kar bikin, Ew tiştên we ji wan stendine, hûnê bi pir tir li wan vegirînin. Hûn mîna tiştekî xam hatin qişlê.., nuha mîna malekî çêkirî û nola însanên agirî, hûnê vegerin gundê xwe.

Ew Fînlanda ku, ji her bexşên tebîet bê par bû di nav wê de, zabitên Fin ên xort, dibûn dermanekî çandî... însanên bi heş, bi qiwet, bi xwîn ji fabrîqên xwe derdixistin..

Leşkeran, ji hevalên xwe yên mezin re, hurmet û hezkirin didan xuya kirin. Di nav wezîfeyên leşkerî de, dilê wan ne dişikandin... Halên hevalên xwe ên sist û natewan teftîş dikirin... Leşkeran, gava ji leşkertiyê der diketin, ji zabitên xwe re, reşbelek dişandin, jiyîna leşkeriyê bi pesn û dilxweşî yad dikirin û êdî li jiyînê bi çavekî din dinêrin... Ji bona xêz û rêzên jiyîna welatê xwe, ji zabitên xwe pîlan û talîmat dixwestin. Zabitên wan jî, ji wan re kitêb, kovar û rojname dişandin...

Di nav welat de pêk hatineke sihî û çandî çêdibû.

Qislê, ji bo pêşveçûna milet ne maniek bû; matîr, cihekî îrşadê bû. Heta gundiya, ji zarokên xwe yên serhişk re digotin; Bira carekê wexta leşkeriya te bê, hingî qişle kare te bîne ser rê.

Belî, qişlê ew dianî ser rê: ji beqê merivê wisan bê kêr tenê qişle derdiket. Kal û pîrên wan ji bi ser da: Erê... erê ., berê çavê me kor bû; me jiyîneke ne çê derbas kiriye. Spas ji Xwedê re, xortên nuha; awayî jiyîna qenc hîn bûn...

Bi vî awayî, qişle, bifikir û bi exlaq bilind bû. Her wekî hevîrtrşê baş ku hevîr bilind dike...

# DEMA NIHA

BERLÎN — Serfermandariya elemanî danezaneke xas belav kiriye, têde hatiye gotin: Hikûmeta Badogliyoyî a bêbext di dora Romayê de esker kom kiri bû, bi hênceta tirs heye ko Hevalbend esker derînin nîzîkî Romayê. Ji wextê ko Badogliyo xwe avêtiye bextê Hevalbenda di Romayê de, eskerên talyan û elemanî şerî hev û du dikirin; dawî mareşal Von Keserling, oltîmatomek daye Serdarê Romayê û piştî çend saetan talyana dest ji şerî kişandine. Ji çek kirina eskerên talyanî dom dike. Çûn û hatin di nav bira Napolî û Salernoyê de ji nû ve destpê kiriye. Eskerên elemanî şaristanê Vatîkanî wê bihemînin. Di Italya Bakurî de Mareşal Romel, serfermandar, piştî şerekî xurt, qiwetên talyana xistiye tengiyê û wan çekê xwe danîne.

Verone, Kremone û Triest hatine vegirtin, bitenê Triestê de 90.000 eskerên talyanî hatine ji çek kirin. Di Frenseyê de Ordiya Von Rundstedt, çekê eskerên talyana ji wan standine; erdê ko di nav bira Tulon û Mentonê de ye hatiye vegirtin. Di Balkana de berberiya talyana hatiye şkênandin, Tîrana—payetextê ernewûda-û Atîne—payetextê Yewnanistanê-hatine vegirtin. Bi tenê li hin deran di nav bira qiwetên me û yên talyana de şer dom dike

BERLÎN— Hitler di radyoyê de panzde deqîqan peyiviye û bi getinine hişk û tehil qala bêbextiya Badogliyoyî kiriye û gotiye: Roja ko mitarekenama talyanî diviya bû bête belavkirin Kralê Italyayê bi xwe digot ko tiştekî wilo nîne û Italyan mîna berî tenişta elemana de ne, û ev her du dewlet dostê hev in, rojên tehl û şêrîn de.

Piştî ko General Eyzenhawer beyana xwe belav kir, nimînendeyên Italyayê digotin elemana: Ingilîza derewa dikin tiştekî welî tu nîne û piştî saeta'kê talyan bi xwe mukir dihatin ko xebera ingilîza ye.

## PÊJINÊN DINYAYÊ

# INGILISTAN



Ingilistan an Brîtanya Mezin Kişwerê cîhanê ê mezintir e. Brîtanya bi xwe ji giravên Ingilistan — Skoçye û Irlandayê bihevketî ye. Rûyê erdê Brîtanya Mezin 300.000 kîlomêtir çargûşe ye. Têde



48 milyon xelk hene. Payetextê Ingilistanê Londre ye. Bajarên di wê n mezin: Liverpûl, Bermingham, Kardîf, Edinbûrg, Mançester û Şeffeld in. Rûyê erdê kişwerê brîtanî 34.612.000 kîlomêtir çargûşe ye



têde 450 milyon xelk rûdinin. Wêneya yekemîn Xwedîtac û Kişwer Kral û Kralîça Brîtanya — Mezin û yên din bergehên Ingilistanê pêş me dikin.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

1ère ANNEE — LUNDI 13 SEPTEMBRE 1943 — NUMERO 20

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-11

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

La campagne d'été si chère à Hitler se déroule décidément à une cadence très accélérée et sans l'espoir d'un changement de sens. Le Dictateur, qui en est réduit maintenant à défendre seul une cause depuis longtemps déjà perdue, commence sans doute à penser à la rédaction de ses mémoires d'outre-tombe, autant pour l'édification des futurs candidats à la domination universelle que pour éviter aux historiens à venir le risque de déformer sa si noble figure.

Le discours qu'il vient de prononcer est assez symptomatique du cours de ses pensées. Un homme qui veut faire croire encore à la victoire n'annonce pas à son peuple avec une telle amertume la trahison de son partenaire ! La démoralisation atteint officiellement les hautes sphères : L'Allemagne est aujourd'hui dans la situation la plus critique de son histoire.

Le déséquilibre causé dans sa stratégie par l'armistice que vient de signer l'Italie est d'autant plus grave que pour essayer de ralentir l'occupation de la péninsule par les Alliés, les Allemands sont obligés d'en occuper les villes les plus importantes et que pour le faire ils se heurtent à un adversaire inattendu le soldat italien lui-même. Ils en viennent d'ailleurs à bout facilement, mais à côté de l'armée italienne se tient un adversaire beaucoup plus dangereux composé de la masse des cheminots, des fonctionnaires, du peuple qui n'hésiteront plus à saboter au maximum le trafic militaire maintenant que les Alliés sont tout près. Ceux-ci n'ont plus à craindre pour leur flottes de débarquement que l'aviation ennemie, puisque les sous-marins axistes de la Méditerranée n'existent plus. Et ce n'est pas cette aviation, avec la dispersion que lui impose la multiplicité des opérations, qui empêchera, par exemple, l'occupation de la Corse ou un débarquement sur la côte albanaise.

Les Alliés sont déjà près de Naple à l'Ouest et au delà de Brindisi à l'Est. De ce côté les grandes étendues plates permettront une avance rapide des éléments motorisés.

En Russie la déroute allemande ne fait que s'accentuer. Les noms des grandes villes reprises par l'Armée Rouge défilent dans les communiqués à peu près comme les noms de rues pour les voyageurs d'un car de l'agence Cook. Les spécialistes de la question estiment qu'avant la fin du mois, les Allemands auront été refoulés derrière le Dnieper. Et bientôt après ce sera la campagne d'hiver, dont les Russes, eux, ne se laisseront pas enlever le monopole.

D.

## Les DEPECHES de la NUIT

*ORAN.— Arrivant à ORAN vers 17 Heures samedi, le général De Gaulle atterrit sur un aérodrome voisin de Mostaganem. Il fut accueilli par le Général JUIN, M. DURANT, Président local de la France Combattante et plusieurs autres personnalités.*

*Précédés de motocyclistes, le général de GAULLE qu'accompagnait le Général CATROUX, Gouverneur Général de l'Algérie, se rendit à pied à l'Hotel de Ville. Devant le monument aux Morts, sont rangés les officiers de la garnison et devant les grilles de la Mairie, les personnalités de la ville. Le Général DE GAULLE salua le monument symbolique puis remit un nouveau drapeau au régiment des tirailleurs sénégalais. La fanfare exécuta «au drapeau» et «la Marseillaise» Ensuite, les troupes présentées par le Général DUMINY défilèrent: les tirailleurs que commanda le Général CATROUX et les glorieux marsouins défilent au milieu des acclamations.*

*Après avoir félicité le Général DUMINY le Général DE GAULLE déposa une gerbe au Monument aux Morts puis quitta «Mostaganem» et gagna Oran par la route côtière ce qui permit au général d'apprécier le grand effort colonisateur entrepris dans cette région et voir au passage les camps militaires. Tous les villages étaient pavoisés Des mats tricolores annonçent l'entrée d'Oran, sur le boulevard Clémenceau une grande banderolle traversant la rue, rappelait les mots célèbres: «Honneur et Patrie, voici le Général De Gaulle».*

*Le Général De Gaulle descendit de voiture boulevard du front de mer. Salué par la «Marseillaise» et une salve de 50 coups de canons, il passa en revue la garde d'honneur. Il déposa ensuite une gerbe au Monument aux Morts et le cortège gagna la préfecture et la cérémonie prit fin au milieu d'un grand enthousiasme.*

## LA GUERRE CETTE SEMAINE

Depuis le début de Septembre les Allemands ne subissent que des échecs. On dirait que la fortune de la guerre, ayant leurré le Reich pendant quatre ans s'est décidée à passer ouvertement dans l'autre camp au début de la cinquième.

Le 30 Août les Allemands annoncent l'évacuation de Taganrog, base importante sur la mer d'Azov, en la qualifiant de «repli stratégique suivant les plans de la défense élastique». L'ordre du jour du Maréchal Staline met les choses au point il s'agit d'une déroute de la Webrmacht par suite d'une attaque soviétique effectuée sur les arrières des lignes ennemies.

Depuis, chaque jour apporte de nouvelle défaites à la Wehrmacht:

1er Septembre — l'Armée Rouge occupe la base fortifiée de Yelnya, avant-poste du bastion de Smolensk.

Deux Septembre — Moscou annonce l'anéantissement des forces allemandes encerclées à l'Ouest de Taganrog. La «défense élastique» de cette ville a été payée par les Allemands de 35.000 morts et de 5.000 prisonniers.

Trois Septembre — Les forces soviétiques prennent simultanément Soumi, sur le front central, et Lissitchansk et Vorochilovsk, sur le front du Sud.

Quatre Septembre — l'Armée Rouges occupe les importants noeuds ferroviaires de Gorlovka et de Miriotvka dans le bassin du Donetz, et annonce la libération complète du district de Vorochilovsgrad.

Cinq Septembre — continuant leur avance dans le Donetz, les Russes occupent l'importante ville d'Artemovsk.

Mais les malheurs du Reich ne se limitent pas au front oriental. Dans la nuit du 31 Août au 1er Septembre — la veille du 4e anniversaire de l'attaque indiscriminée de la Luftwaffe contre Varsovie — les bombardiers alliés déversent 1.800 tonnes de bombes sur Berlin dans l'espace de 50 minutes. Dans la nuit du 3 au 4 Septembre, ils reviennent à la charge.

Il y a 3 ans, quand sa victoire parut proche, Hitler s'écria au Sportpalast de Berlin: «Les villes anglaises, nous les effacerons de la carte du monde». Mais après Hambourg rasée, c'est le tour de Berlin d'être «effacée», Le sportpalast est-il encore debout.

C'est également depuis le début du mois que la situation du Danemark, déjà tendue, s'aggrave encore. Les Nazis y on proclamé l'état de siège; les Danois font sauter locomotives, usines de guerre et installations ferroviaires, Dans l'esprit du Reich, le Danemark devait constituer le modèle de l'Ordre Nouveau en Europe. Pendant longtemps les Danois avaient joui d'un régime de faveur. Mais la situation du Reich devenant plus précaire la situation de tous les peuples opprimés a changé. Et les Danois à leur tour sont entrés dans la bataille. Suivant l'exemple des marins de Toulon, 45 sur 60 unités de guerre se sont sabordées, et 9 autres ont pu atteindre les ports suédois de Malmoe et de Landskrona.

Autre fait significatif : la Suède avait déjà interdit aux Allemands le droit de passage pour leurs soldats et leur matériel de guerre, puis avait protesté énergiquement contre l'activité des sous-marins du Reich qui ont coulé plusieurs de ses bateaux. Maintenant, les Suédois se sont contentés de mettre les équipages danois sous le commandement d'officiers supérieurs suédois, en les laissant sur leurs navires et sans les désarmer.

Enfin, le 3 Septembre, quatrième anniversaire de l'entrée en guerre des Alliés, a été marqué d'un événement capital: des troupes canadiennes et britanniques — et notamment la Huitième armée qui a écrit tant de pages glorieuses de cette guerre — ont mis le pied sur le continent européen.

Berlin et Rome avaient déclaré que l'Europe était devenue une forteresse inviolable, dont tous les abords étaient gardés par des fortifications hérissées de canons, de mortiers et de mitrailleuses, et détenues par des troupes d'élite. Les troupes alliées ont bien trouvé des travaux de défense, et même les armes ; mais les «troupes d'élite» les avaient abandonnés. C'est pourquoi, n'ayant guère rencontré de résistance, elles ont pu occuper une bande large d'une soixantaine de km. et profonde de vingt, en quatre jours.

Il y a quatre ans, les dirigeants allemands ont précipité leur pays dans la guerre, déclarant que c'étaient là le seul moyen de «briser l'encerclement du Reich» A ce moment, l'encerclement de l'Allemagne n'était que mensonge. Maintenant, il est devenu réalité. Le Reich est encerclé de tous les côtés par les forces alliées qui avancent à l'Est, l'Armée Rouge au Sud, les troupes anglo-saxonnes; à l'Ouest, les peuples opprimés qui poursuivent leur luttes implacables dans l'ombre ; et dans le ciel de l'Allemagne par les bombardiers alliés qui déversent inlassablement des millions de tonnes de bombes.

Ayant lancé dans le monde la doctrine de la guerre totale, le Reich en sent maintenant l'application.

L. V.

## POEME KURDE

### LE SABLE CHANTANT

Il a devant lui
Une poignée de sable.
Les grains sont les hommes;
Dans l'ensemble
Il voit
Des reines et des rois,
Des jardins d'iris,
Des palais, des tombeaux
De ombres, des flambeaux,
Des filles jeunes,
Des roses sur leurs joues
Près des étangs
Des enfants qui jouent.
Des destinées
Qui marchent en somnolant,
Les fontaines d'espoir
Des désespérés croyants.
Il voit des étoiles
En regardant le sable
Des perfidies
Et des secrets inavouables.
Il murmure,
Regarde les passants,
Dans la nuit de la vie
Il cherche le croissant.
La main impuissante,
Le désir insatiable,
La mer est muette
Voilà que chante le sable.
Pays de lumière,
Pays gris de souffrance,
Liqueur endormante
Des vignes de croyance.

Dr. BEDIR KHAN

### RESUME DES NOUVELLES

FRANCE .— Le Général De Gaulle prononce un discours à Oran. Une ordonnance du Comité de la Libération prévoit la constitution d'une Assemblée Consultative provisoire.

Le Comité Central de la France Combattante lance une campagne de solidarité française.

**Front de Méditerranée**

3 autres destroyeurs italiens sont arrivés à Malte.

Les avions italiens de la base de Samos ont rallié Chypre.

De violents combats sont en cours dans la région de Naples.

**Front de Russie**

L'offensive soviétique se développe favorablement.

La journée d'hier a couté aux Allemands 65 tanks et 28 avions.

La cérémonie du sacre du nouveau patriarche de Russie a eu lieu Dimanche à la Cathédrale de Moscou.

### LA PRESSE KURDE

*Nous signalons, à nos lecteurs s'intéressant au mouvement culturel KURDE, les journaux et périodiques kurdes suivants:*

**RIYA TAZÉ.** organe des Kurdes de l'U.R.S.S paraissant à Erivan.

**GALAWÉJ,** la plus grande revue littéraire kurde, parait chaque mois à Bagdad, avec 80 à 100 pages de texte

**JIYAN** hebdomadaire politique et littéraire. paraissant à Souleymanié.

**HAWAR,** revue littéraire bi-mensuelle paraissant à Damas. Textes kurdes et françals.

**RONAH** Revue mensuelle illustré, paraissant Damas.

# NOT NOQAV

## Not Noqavên Elemanî Hatine Biņ Av Kirin

WEŞINGTON— Wezareta emerîkanî a behrî dide zanîn: di nav mehên hizêran û tîrmehê de 90 noqavên dijmina hatine bin av kirin. 29 hebên wan bi derbên balafir û waporşerên emerîkanî xeriqîne.

## DAN & STANDINA DIPLOMASI

### DI NAV BIRA SOVYETISTAN & MISRÊ DE DESTPÊ KIRIYE

Qahire.— R : Wezareta Misrê dervekariyê dide zanîn : Dan û standina diplomasî, di nav bira hikûmetên Sovyetistan û Misrê de destpê kiriye. Piştî axaftinên ko di nav bira M. M a i s k î û Wezîrê Misrê ê yekemîn de çêbûne, ev pirs ketiye rê. Wextekî nîzing de her du dewlet nimînen deyên xwe ên diplomasî wê biguhêzin

## PEYIVA PAPA & RUZWELT

ROME— Rojnama Vetîkanê Popolo dî Roma dide zanîn: roja şembê Papa bi Serekcimhûr Rûzwelt re bi telefonê axaftiye; peyiva wan 50 deqîqan dom kiriye.

MOSKÛ— R: Radyoa Moskovayê duhî êvarê digot: rewişa elemana a eskerî bê hêvî û niyaz e

BERNE — R: Duhî di Romayê de işareta talukê hatiye dayîn û balafireke nenas bombe avêtine.

NÛ YORK— Nûçeyên ko ji Madrîdê tên elam didin ko leşkerên brîtanî derketine Spêziayê, qerargeha talyanî a behrî ya ko 50 mîl di bakûr—roavayê Livûrnê de ye.

CEZAYIR— Bajarê Galîku—Marina hatiye standin.

# DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

### ÇEQILMAST

Kerîm lawo çeqilmast
Me pez kirî bi heneka
Em bûn koçerê birast.

Kerîm lawo çeqilmast
Me pez kirî bi heneka
Em bûn koçerê bi rast
Mi keyand û min meyand
Min kir ne kir ne bû mast,
Min rabû kir çeqilmast.

Kerîm bavê Sultanê
Te kon vegirtin l'latanê
Neqla mastê kûçiko
Giha serê meydanê...

Wan beqalê bajariya
Qantir ajotin xanê
Bar avêtin dikanê
Mast kiri bûn tepsika
Avêtin vê qapanê.

Kerim lawo çeqilmast
Pisîkê mexmer alast
Me pez kirî bi heneka
Em bûn koçerê birast.

—o—

Sê bizinên kûçik hene
Xelkê kehrê xwe dan kir
Û xelkê pezê xwe êm kir
Ew zelamê çû çi kir
Eba mezin li xwe kir
D'ser bizna re sekinî
Stoyê xwe j'ebê zeyde kir
J'her sêya yek nas ne kir.

Binya mala me b'kevir
Xelkê karê xwe dan kir
Xelke pezê xwe êm kir
Sê karê teres hebûn
Sê biznê teres hebûn
J'her siyan yek nas ne kir

J'qapaniya dinyayê
Çû eba mezin l'xwe kir
Sê bihûst û çar til' ya
Stoy' xwe j'ebê dirêj kir.
Hat cihaba nexêrê
Gura biz'na beşik kuşt
Biz'na gerdik brîndar

Biz'na belik va li mal
Hat cewaba nexêrê
Eliyê Remo Edla bir
Hengî teres bihecî
Go zîk û da xencerê
Bi êgir ket û bela kir.

Go : em b' dest lepkî
Bi wan nikarin
Hêvî Xwedê û şêxê Gir.

Dor tixwîbê bi xişxişk
T'li Fatima çîm guhişk
Ew dimeşe weke mişk
Meşa wê, meşa dûpişk,
Zaroa bi ser de,,, .
Fişkefişk.
Go : bi xwedê
Em na xwin nanê hişk
J'dewsa nan û pîvazê
Em bixwin qaymaq û nivîşk

Edla û Remî bûne cot
Her du çûn Dêra Zorê
Edla xwe nivîsî rehbik
Remo xwe nivîsî pirot
Go :hesebkî
Me mast ne firot.

### ÇEQILMAST

Me pez kirî-j' Qelendera
Hey kûçik lawê qeşmera
L'ser sînca Remo binêr
L'elbika û l'mexmera

Remo cîranê Receb
Gerya bu l'Şam û l'Heleb
Peyde kir sê biznê celeb
Kumê xwe kiri bû merkeb
Ji bo xatirê pisîka,
Go : ne xwin
Mastê wek kezeb
Derpiyê j'na xwe qetand
Kir parzûna şîr û rûn.
Gû bi riha xwe kir
Çeqilmastê geniyê
Xist elbika dariyê
Avêt Midyata rengiyê,
Weqî daye bi çerxiyê
Kirî cawê riziyê
Li bejna xwe kiriyê.

—o—

Kerîm lawo çeqilmast
Hat cewaba ne xeyrê
Biz'na reşik va li mal
Eva qirik gura xwar
Eva beşik brîndar.

Edla, Remo bûne cot
Çûn dêra Zehferanê
Edlê xwe n'vîsî rehbik
Remo xwe nivîst pirot
Hesêb me rûn ne firot.
Hingî Kerîm beicî .
Go : zîko da xencerê
L' tirafê xist û bela kir
Her piçikê, b' derkê dibir
Hawara me ma Şêxê Kur.

Xelkê bizinên me bir
Kerîm lawo çeqilmast
Te konê çarde stûnî
Te l' erdê xist û guhast
Tu bu koçerê birast;
Te serê til'ya xwe na last.
Kerîm lawo çeqilmast
Tu ger'ya l' Şam û Heleb
Te anî sê bizin celeb
Yeke kwîr û yek seqet

Kerîm lawê qeşmera
Pez kirî j' Qelendera
Kerîm lawo çeqilmast
Pisîkê mexmer alast
Me pez kirî bi heneka
Em bûn koçerê bi rast.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

 EVE EMERIKE 

Emerîka ji bona zaroan cihekî delal e. Mîna li her derê di Emerîkayê de jî zaro roniya malê ne û hêviya welêt.

Emerîkanî weke miletên dinyayê ên din, yên xwedî terbiye û zanîn bi zaroyên xwe zehf mijûl dibin û her fîdakariyê dikin dako kur û keçên wan bikevin dibistanên mezin û bibin insanên hêja, royên xwe dişînin karine giran, berpirsiyar dibin, têne girtin û êşandin. Emerîkanî li zaroyên xwe na xin, wan çavtirsiyandî na kin, bi çeyî û ziravî bi wan re didin distînin û gelek qedrê wan digirin.

Piraniya zaroyên Emerîkayê tirs çiye nizanin, derew çiye nizanin. Terbiya wan de, awayê tevger û rêzikên wan de hejkirin,



xwedî ilim û exlaq, camêr û bikêr hatî. Li gora qanûnên Emerîkayê zaro gava pênc-şeş salî ne divê herin dibistanê û tê de deh û heta donzde salan bixwînin. Hikûmet ji bona hemî zaroyên Emerîkayê dibistanine çeleng û spehî ava kirine û heke dibistan ji xanî û gundên zaroyan dûr in, otomobîl an omnîbûsên hikumetê ji bona çûn û hatine zaroan li ber dest in.

Piraniya zaroyên Emerîkayê wextê xwe, di dibistanan de bi xwendin û xebat û leyistin û li mal dîsa bi xebat û leyistinê derbaz dikin, û li mal bi kar û şuxlên malê jî mijûl dibin, û bi vî awayî hêj ciwaniya xwe de, bikêrî nefsa isûl, giranî, ziravî, raman mifteya her qencî û pêşveketinê ye.

Zaroyên Emerîkayê berî her tiştî ji Xwedê, ji welat û milet û ji dê û bavê xwe hez dikin.

Û zaroyên Emerîkayê dibêjin; ez ji Xwedê û bitenê ji Xwedê ditirsim û ji welat û dê û bavê xwe hez dikim.

Zaroyên Emerîkayê erd û miletê xwe nas dikin, tarîx û erdnigariya Emerîkayê xweş dizanin.

Ji bona ko miletek bikare heqê xwe nas b i k e û heqê xwe bi gotin, bi qelem, û gava hewce dibe bi xwîna xwe biparêze, midafi e bike, divê zaroyên vî miletî hêj di biçûkahiya xwe de, milet û



xwe û dê û bavê xwe tên. Gelek zaro di ciwaniya xwe de bi xebata ko pê dersên dibistanê bi şûnda na mînin û bi xebatên ko pê siheta zaroan zererê na bîne mijûl dibin û çend peran têxin destê xwe. Lê zaro nabe ko bi îşên giran mijûl bibin ko pê siheta wan zererê di bîne an ji dibistana xwe bi şûnda dimînin, qanûnên Emerîkayê vî tiştî bernade; û dê û bavên ko zawelatê xwe, heqên milet û welatê xwe nas bikin û qedrê wan bilind bigirin. Zaroyên milet divê bi îşên welatê xwe bendewar, elaqedar bibin.

Istiqbal, rojên ko bên yên wan in. Zaroyên welatekî divê bizaninhalê welatê wan çawa ye, û ji bo na parastin û serbestiya welêt çi tişt hene ko divê bêne pêk anîni

Sal 1 — Hejmar 21

Duşemb 20 Ilon 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lireyên Surî; ji bona welatên din 2 lireyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

### Teklîfên Japona

Weşington—R: Duhî di civana rajnamevanan de wezîrê çînê ê dervekariyê gotiye: japona silh teklîfî me dikin, û di vê babetê de hero hêj comerdtir dibin, wan gotiye: heke hikûmeta çînî bû Hevalbendê me, emê eskerên xwe ji erdê Çînê bi şûnda bikişînin.

### Bilxaristan

Nû-York—R: Nûçegihayê Asosiyeted Presê dide zanîn; Gerînendeyên Taca Bilxaristanê gotine elemana ko leşkerên Bilxaristanê heke Ordiyên ingilîz û emerîkanî derketine Ewrîpa Nîroyî şerî wan bikin, lê heke Ûris berî wan hatine Bilxaristanê, Ordiya bilxarî şerî ûrisa na ke.

### Xesarên Emerîkanî

Weşington—R: Ji destpêka şerî û heta niha 102.573 eskerên emerîkanî ji qiwet ketine: 19.721 kuştî, 26.765 brîndar, 32.157 winda bûyî, 23.935 hêsîr.

### Ordiya Sor

MOSKÛ — Ordiya Sor di sê deran de serfiraz bû ye:

1—Ketiye erdê piştçeperên elemana — di dûrahiya sed kilomêtrande - li roavayê Tagenrogê û di pêşiya Qrimê de bendera mezin î hêjatir Mariopol standiye.

2— Di nîro—roavayê Xarkovê de, wê baskê eniya elemanî, ya erdê Xarkovê neqeb kiriye, zora dijmina biriye, her çend jî li vê derê, pêdana leşkerên elemanî, ji her derên din xurtir bû; û Barvenkovo vegirtiye, bajarê ko li ser nîvê riya Slaviansk û Lozovayê de avakirî ye, Rêhesina Donbaz— Kiyevê,di vî şaristanî re dibore.

### Ordiya Sor

3—Du gelînekên rêhesinan ên girane Volnovaxa û Şapinoyê xistine destê xwe, ev gehînekên he hikmî dora erdên pira Dniepr — Zaporoj û yên Dniepr — Petrovskayê dikin.

Di eniya Smolensk—Behra Azovê de, milyonek eskerên elemanî xwe bi şûnda dikişînin.

### Teymis Dibêje:

Londre—R: Rojnama Ingilîzî Teymis qala şerê ko der erdê Italyayê, di nav bira eleman û Hevalbendan de çêdibe dike û dinivîse:

Elemana haziriya xwe kirine û di erdê Italyayê de şerine zor çêbibin; qesda elemana ji vî tiştî dido ne: yek siyasî a din eskerî.

Eleman dixwazin ji havalbendên xwe ên biçûk re, bidin seh kirin, ko bi dest ji şerî kişandinê, şer na qede, her wekî li Italyayê çêbûye; û ji aliyê din bêterefmayîn ji bona rahetiya miletekî, êdî, ne tu derman e, ev şer ji bona tiştine pak û bilind çêdibe, û di vî warê şerî de ji bona bêterefan cih nîne.

### Gotara Rozwelt

Serekcimhûr Rûzwelt roja îne

# STOLA TALYANÎ

## Sed wapor hatine Maltê

CEZAYIR — Ji sedî bêtir wapor û çengkeştiyên talyanî di Maltayê de li hev civiyane. Di nav wan de ; 5 zirehpûş, 6 qriwazor, 2 qriwazorên sivik, qriwaxoreke arîkariyê, waporeke balafirhilgir, 19 noqav, 28 destriyor, 12 vedetên torpîlavêj, 6 korvet, waporeke nesax û brîndaran û yekîneyine behrî ên din hene.

# DI DONZDE GIRAVAN DE

## Şerine Zor û Xwîndar Çêdibin

LONDRE — Nûçegihayê Teymisê dide zanîn : der girava Rodosê, di nav bira eskerên talyan û elemanî de şerine gelek zor çêdibin. Di donzde giravan de 60.000 eskerên talyanî û 7,000 eskerên elemanî hene.

## Stola Dinyayê a Xurtir & Zeximtir

Weşington—R: Wezareta emerîkanî a behrî dide zanîn: Îro stola emerîkanî, stola dinyayê a xurtir e. Qiweta emerîkanî a behrê ji 14.072 waporan bi hevketî ye; 613 hebên wan çengeştî ne. Di destê behriya emerîkanî de 18.000 balafir hene.

# DER ENIYA PESIFIKÊ

MELBURN— Qerargeha Hevalbenda a mezin li Pesîfîka Nîro—Roavayî elam dide : ji balafirgehê pê ve, qiwetên Hevalbenda bender û bajarê Salamuayê,— Girava Nûgineyê — vegirtine. Japona zehf çek û posat hiştine. Qerargeha japanî a Laeyê, bi vegirtina Salamûaye ketiye tengiyeke giran.

Bombeavêjên emerîkanî ên giran di girava Kolam—Bangarayê de çeper û penahên japona yên Vilayê bombardiman kirine.

WEŞINGTON— Wezareta emerîkanî a behrî dide zanîn: li 23—ê tebaxê bombeavêjên dijmina di behra spî de 2 noqavên emerîkanî bin av kirine. Dîsa ev wezaret elam dide ko 15 balafirên japonî dirêjî qerargeha emerîkanî a Tunaputiyê kirine; xe sar sivik in.

# SERFIRAZIYA ORDIYA SOR

## Pêşveçûna Leşkerên Rûsî Domdike

MOSKÛ—Hefta borî Ordiya Sor ji serfirayê çûye serfiraziyê, leşkerên elemanî di tevayiya eniyên şerî de 50 û heta 100 mîl xwe bi şûnda kişandine. Perîşaniya elemana ne maze di axa Donetzê û li ser riya Smolensk û ya Odesayê zehf giran e. Di nav deh rojên vê mehê ên pêşîn de erdê ko ji destê elemana hatiye standin, ji axa talyana mezintir e. Piştî serfiraziyên Orel— Bielgorod—Xarkovê ordiya sor 55 bajar û şaristan û 3,000 gund û avahîgeh vegirtine.

Li zehf deran elemana çek û posat û zad û zexîreyên xwe di cih de hiştine û baz dane.

Ordiya Sor di axa Ukrenyayê de, ji alîkî elemana bi şûnda dizivirîne û ji aliyê din gihaye dera ko ji Kievê, 30 mîl dûr e.

Pêşveçana Ordiya Sor bi awakî hinde lez dom dike ko, ji elemana nayê torpîla deynin erdê —her wekî adeta wan e— û bervehatina lekên rûsî hinik biewiqînin.

# REFA NORMANDI

## 61 Balafirên elemanî avêtine erdê

MOSKÛ — R : Refa frensizî Normandî di şerên hewayî ên dawîn de şêst û yek balafirên elemanî anîne xwar.

LA VALET— Destriyora Italyanî «Auguste Riboti» hatiye Maltayê nameyek şiyandiye Qongrê—civatmiletê Emerîkanî—tê de hatiye gotin: Di Dema etlahiya civatmiletî de tiştine girane qewimîne û niho di erdê Ewrûpa û Asyayê de şerine mezin çêdibin.

Di nîroyê Napoliyê de, der navbira eskerên me û elemanan de qomandine xwîndar dest pê kirine, xesar dijwar in: Eleman bi çavsorî şer dikin û dizanin ko çek danîna talyana çi tiştekî giran ye û ji şûnmayiyên vê bûyerê hisaban dikin. Milet û civatmiletê emerîkanî, dikarin qanî bibin ko eskerên me ji Italyayê pê ve, wê derkevin erdine din. Me qerara vegirtina Erdê Talyana di Qezeblankayê de da bû, û me di civanê Kubekê de jî, qerarine din dane û li wê me sînorên qerarên xwe hêj firehtir kirine, û emê bi derbine giran zora xwe bidin Japon û Elemana.

Li 10—e hizêranê qomanda Sicilyayê destpê kir û ev şer di nav 38 rojan de qediya. Xesarên Hevalbenda 38.158 peya ne, têde 7.445 Emerîkanî hene. Zererên dijmina 165.000 in, têde 132.000 hêsîr hene.

Xelkê Italyayê bi şahî çûne pêrgîna eskerên me, û her çend ji talyan 21 sal barê zorkeriya fasizmê hilgirtine, hevîna azahî û serbestiyê di dilê wan de ne vemireye.

Hitler digot: keleha Ewrûpayê nikare bête standin: emê wextê xwe de pêş wî bikin ko ev gotin ne rast e. Ordiya Sor pêş ve dikeve; leşkerên rûsî dijmina ji welatê xwe wê derînin û erdê Germanistanê dê bêxin destê xwe.

Em dizanin ko miletên biçûk yên ko hevalkarê elemana ne mînekarî silh û aştiyê ne.

Xesarine dijwar wê bigehin me; lê emê zora neyaran bibin; û qiweta japona, piştî ko me ew kir jor û dûman wê bişkê.

## GENERAL PETIT

Moskû—R: Serekê kardariya frensizî a eskerî li Sovyetistanê General Petit duhî li saet 17 û nîvan de bi Mareşal Stalin û M. Molov re dûr û dirêj peyiviye.

Cezayir—A.F.I Komîte frensizî a xelasiya Welêt îro li saet dehan civanek danî.

Cezayir—A.F.I. General Kole bûye fermandarê axa Fezê.

## GENERAL KATRU

Cezayir—A.F.I. General Katrû hatiye xatirxwaziya bajarê Cezayirê.

Nikosî— Heşt waporşerên talyanî hatine Qibrisê.

## GOTARA MUSOLINI

Rome— Duhî Musolînî di Radyoyê de peyiviye û gotiye: fesistan «Xwedî kirasên reş»!

Hon ji nû ve dengê min dibihîsin. Emrê Kralê Italyayê ez dam girtin. Lê min zanî bû ko Hitler mina dest brayekî bi min mijûl bibe. Sihvanvanên elemanî ez ji hebsê xelas kirim. Kralê Italyayê bêbextî li Germanistanê kiriye, û dixwest min teslîmî dijminan bike

Êdî em nikarim qîma xwe bi Kral bînin, ji xwe miletê talyanî ji Kralîtiyê ne razî bû û tim û daim berberiya wê dikir.

Emê çekê xwe hilgirin û di tenişta elemana de şerê dijmina bikin. Bêbextiya ko hatiye nivîsandin rûpelên tarîxa Italyayê, bitenê bixwîn dikare bête şuştin.

## SIR STAFORD KRIPS

LONDRE— Sir Staford Krips, wezîrê çêkirina balafiran gotiye: Nabe ko emê xwe bi nûçeyên xweş bilorînin û destê xwe ê xebatê sist bikin. Bihayê serfiraziyê giran e û şer ji dawiya xwe hêj dûr e.

Rome— Ejensa talyanî Stefanî dide zanîn: Mareşalê talyanî Ugo Kavalero, serekê şerdariya talyanî ê kevin xwe kuştiye; ew 63 salî bû. Berî bi çend rojan Berlînê da bû Zanîn ko elemana Kavalero ji hebsê derêxisti bûn.

## DANEZAN

Londre— Wezareta Brîtanî a hewayî dide zanîn: şevêçûyî bombeavêjên brîtanî, bi awakî gelek xurt dirêjî febrîqeyên Montlusonê yên qewçûkan kirine, 40 mîl bakur roavayê Vişiyê.

Ewr û dûman armanca winda dikirin, lêbelê raporên pêşîn didin zanîn ko bombeyên me ketine cih daxwazan. Di Germanistana bakur-roavayî de, hêjagehên elemana û payetextê wan Berlîn jî, hatine bombardiman kirin.

Nêçîrvanên me yên ko di ser erdê Frensê re, karê xwe ê nobetdarî û dîdevaniyê pêk dianîn, li balafirgehên dijmina û li kamyon û rêhesinên di wan xistine, û ba lafireke neyar pelixandine, 8 bom beavêj û 2 nêçîrvanên me venege riyane warên xwe.

Londre—Şevadî çend balafirên dijmin di ser axa Ingilistanê re firiyane û bombe avêtine, hinik xesar heye, canê çend peyan êşiyaye; di ser Ingilistanê re 3 û di ser Frensê re balafireke dijmin hatine xira kirin.

# DEMA NIHA

## TEVKARIYA HEVALBENDA

Serekcimhûr Rûzwelt, di gotara xwe a dawîn de gava qala Germanistanê dikir digot ko qerara Fmerîka li ser rakirina koka nazîzm û leşkerperestiya prûsî neguhêrbar e, û dinyayê divêt ji taluka wan her du belayên mezin bête xelas kirin. Cihgirtiyê serekcimhûr Mr. Welas û wezîrê emerîkanî ê dervekariyê Mr. Kordel Hal, di vê babetê de mîna Mr. Rûzwelt difikirin. Ji xwe nas e ko serekwezîr Çorçil û wezîrê brîtanî ê dervekariyê Mr. Îdin jî, vê qeratê kirine ya xwe û zehf nimînendeyên civatmiletê brîtanî, di vê pirsê de xwe gihandine wezîrê brîtanî ê yekemîn. Lê hawîrên diplomasî ên biyanî, carna dibihîsin ko hin nimînendeyên yekîtiya Xebatkerên Brîtanî dixwazin elemanên nazî û no—nazî ji hev veqetînin û bi girtina qedrê elemanên no—nazî dema hilweşandina naziyan bilezînin.

Li gora hawîrên payetextê Brîtanya Mezin ev tiştê bi talukeyine dijwar girêdayîye û bivêneve pê çavê miletên ko ev çend sal in, di destê elemana de êşiyane. wê bêne tirsandin. Hawîrên Brîtanî her çend jî, li ser pirsa ji hev kirina talyana bi navê fesîst û no—fesîst bi awakî nêrmtir dipeyivin, her hal dibêjin ko di vî tiştî de jî giranî li cih e. Divê neyê ji bîr kirin ko talyanên no—fesîst, ji qeneve sînorên Italyayê yên sala 1918—an wê bixwazin û ev pirs bi serê xwe, tiştekî zirav û giraneye; ji ber ko li gora Yugoslava pereçeyek erdê Yugoslavî di destê talyana de ye û çavê wan lê ye. Her wekî rojekê hikûmeta Çang—Key—Çekî dikare bixwaze bibe mîratxwerê hemî imtiyazên ko hatine dayîn hikûmeta Nankînê. Ji ber vê yekê heta ko teşxeleyin çenebin, ji bona ingilîz û emerîkaniya rê û debara çêtir ev e ko ev pirsên he, ne bitenê bi tevkariya Ûrisa, lêbelê bi tevkariya Frense, Yugoslavya, Yewnanistan, Holende, Belçîke û Çekoslovakyayê bêne safî kirin.

### ITALYANINO RABIN

BANGÎNA SEREKCIUMHÛR RÛZWELT Û MR. ÇORCIL

WEŞINGTON—Serekcimhûr Rûzwelt û Mr. Çorcil bangîna jêrîn şiyandine talyana: Bi xurtî li elemana xin. Wext hatiye û divê hon xwe pêk bînin da ko silh, aştî û azahî bibe heqê we. Armanca pê şîn paqijkirina erdê Italyayê ji elemana ye. Hitler bi destê hevalkarêxwe Musolînî hon xistin perîşaniyê, û talyan di nav sêlakên Misrê û berfên Rûsyayê de hatine kuştin. Elemana di qadên şerî de tim û daim hêbextî li talyana kirine, wan talyan dixistin pêşiyê û pê karê xwe ê bişûndekişandina eskerên xwe pêk dianîn. Niho jî Hitler dil dike bi wasite talyana dema perîşanî û kambaxiya xwe bi dûr xe û Elemana haziriya xwe kirine û dixwazin we jî mîna xelkên welatên din ên vegirtî bifetisînin.

Li elemana rabin, destê xwe bavêjin çekê xwe û di teniştа Hevalbendan de, di teniştа dostên xwe brîtanî û emerîkaniyan de, ji bona serbestiya xwe pêş ve bimeşin.

# DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

### NOFA

Dêra Zorê yekban e
Krasê Nofa kitan e
Memik 'tê re xuya ne
Yek deştê, yek zozan e.
Dêra Zorê bi dikan e
Memkên Nofa fincan e
L' serê sûk û dikana
Dêka Nofa file ye .
Bavê wê misilman e.
Dêra Zorê mezin e
Destê Nofa b'bazin e
Par qîz bû îsal jin e
Hena l'ser dest û bazin e.
Dêra zorê biçûk e
Par qîz bû îsal bûk e
Hena l'ser dest û nenûk e
Lê,lê,lê,lê Nofanê.
Endîwerê paytext e
Ka kevoka l'ser text e
Kanî xortê di rext de
Ka soz û ka te bext e.
Nisêbînê giş jin in
Keçên Stilî xweşik in
Diyarbekrî ticar in
Meskenê dost û yar in.
Memik behra xortan e
Memik l'gewrê gihane
Wek fincanê fexfûrî
L'serê sûk û dikana.

### AZE

Aze yi, tu Aze yî
Weleh, bileh tu Aze yî
Kuçik tu pir fitne yî
Fitneyê gundê me yî.
Aze tu bavê Madiyê
Te rahişt tûrê parseyê
T'daket binya xetê yê
T'sed olçek micbî kirin.
T' destê xwe xist çalê yê
T' berê xwe da Nisêbînê
Baş—çawîşê Steltîê
B' çavê serê xwe dibînê
Destê Azê b'kelemça dixînê
Berî didin Mêrdînê.
Nûrê radibe dilezînê
Hebana derewa
Bi xwe re hiltînê
L'Midyatê direşînê.
Aze çû bû Diyarbekir
Serbarê Azê şekir
Beqala l'hev zêde kir.
Qesra Azê du kulek
Jê firya bûn du ordek
Tu l' riha Azê binêr
Wek teriya kuç'kê belek.
Qesra Azê du qozî
Jê fir'ya bûn du horî.
Tu l'xweha Azê binêr
Weke gîska hat ber nêrî.

### XURFANÊ

Doy, doy, Xurfanê.!!.
Xirbê Qeplo bilindcê,
Kurika Çeto Altincê,
Dimsfiroş in Kermêtî,
Şkêft pir têde Kersivanî,
Serê diyar de T'afî
Kundê şkêra Zihnî
Du bîr têde Mercî.
Hatim aliyê vî alî
Qamkutik in j'xwey Golî
Ardê cehê Metînî
J'bo gelaciyê Biyêrtî
J'xewa şevê ra Merzikî
Gundê mezin Mehsertî
Çîm werqilê di Qelaçî
Keçkê di xweşik Ziyaretê.
Ez hatim aliyê vî alî
Serê diyêr de Êdwî
Ser bi ribê Rişmilî
Hek tu l'jinê çê digerî
Dakev tixûba Rengî.
Jinê d'bî xwedî sêwî
Xwediyê ta'b û sêfilî
Mi heft sala Şivanî
Û m'heft sala gavanî
Nanê heqê jinik bî.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## EVE EMERÎKE

Piraniya mêrên Emerîkayê, ji bona bi xwedî kirina jîn û zaroyên xwe bi karekî mijûl dibin. Jin li mal dimînin û işên malê, işê zaroan, terbiye kirina wan karê jinay e.

Lê barê jinan ji yên mêra ne siviktir e.

Jinkê divê ji bona rahetî û kamiraniya mêrê xwe, bala xwe bide paqijî, spehîtî û tertîba malê, wê divê bi terbiya zaroa mijûl bibe da ko zaro, sibe bibin jin û û nivîsandinê hez dikin, qedrê zanîn û dibistanê digirin.

Emerîkanî sedî de not û pênc xwendin û nivîsandinê dizanin, welat, milet, istiqlal, heq, azahî, serbestî qîmeta jiyînê çiye nas dikin, û yên ko ev tiştên he xweş nas ne kirine, herwekî dixwînin, ji kitêban van tişta dielimin.

Asasa malê dê ye, û diyên nezan rêben in, nikarin çavê zaroyên xwe vekin û eşqa zanîn, me



mêrên qenc, xwedî ilm û bikêrhatî, ji ber vê yekê keçên Emerîkayê mîna lawên wî welatî 8 û heta 10 salan di dibistanan de dixwînin û ji zanînên adetî mîna zman, dîrok, hisab, hendese, erdnigarî-coxrafiyê pêve, hînî drûnkerî, dermankirina nesaxiya zaroan û gerandina karên malê dibin.

Her wekî ilm û hiner her tiştî, her xebatê siviktir dike, jinên emerîkanî di saya zanîn û hinerweriya xwe de, zehf işên xwe bi mekînan diqedînin, di bin barê zinahî, heq û serbestiyê bêxin dilê law û keçên xwe..

Zaroyên Emerîkayê ên belengaz jî, bi arîkariya dewlemendan û bi arîkariya camêran dikevin dibistanên mezin û gelek caran têtê dîtin ko kurê şivan, cotkar, pale an xebatkarekê şehadeyine mezin distînin, dibin diktor, abûkat, mihendiz, zabit, hakim wezîr û serekcimhûr.

Dê û bavê Emerîkanî nan û xwarina xwe kêm dikin, lê tucara kurê xwe ji dibistanê bi şûnda na



giraniya xebatê de, westa na kevin, û ne bitenê bi karên malê, lêbelê bi xwendin û pêşveçûna zaroyên xwe mijûl dibin, dersa wan dibêjin. Dibistana Zaroan a pêşîn di Emerîkayê de mal e, û şeyda û mamosteyê ewil dê ye.

Zaro hêj biçûkahiya xwe de bala xwe didin paqijiya dest û rû û dev û diranên xwe, cilên xwe, textên xwe; ji kitêb, ji xwendin hêlin.

Xelkê gundekî digehin hev û ji zaroyên gund xortekî hêja dibijêrin û bi pereyên xwe wî dişînin dibistaneke mezin; piştî 8-10 salan ev xort dibe diktor an zabitek û vedigere gundê xwe.

Xelkê gund bi vî tiştî ecêb şa dibin û ev xortê xwenda û zana bi kêrî xelkê gund û bi kêrî hemî welatiyên xwe tê.

## Strana Kurdî

### SITIYA NAMO

Oyo, yoyo, Mûs Xaino...
Sitiya Namo digot:
Mûs Xaino, bext ne wiha ye,
Bext ne wiha ye
Ne bi zirta ye û ne bi forta ye,
Ne bi gera ser xaniya ye
Ne bi debance qerebelo
Te li tenişta rastê girêdayî ye,
Ne bi qayîşê rexta çep û rasto
te girêdayî...
Mûsa Xain bextê dinyayê ne
wiha ye,
Mi go: qey tu bi mêraniyê
Mîna Mihemed begî, lawê
Cemîl paşa yî
Li hinda pira reş, bajarê
Diyarbekrê
Pêşiya trombêlê zabita
rê girêdayê...

Mi go: qey tu bi ilmê xwe
Mîna lawê Mela Fethulayê
Mi go: qey tu bi ciwanmêriyê
Mîna Muchim şêxê erebayê,..
Şevê nîvê şeva Huseynê Gurî
serwanê deva tifingek
şalixî, di ser terşê xwe re berdayî
Te dev' ji Siltana Namo berda
û tu reviyayî...

Ji Qonaxa sê saeta çefî û egalê
Mûs Xainê min, mîna
Mijê biharê li ber çavê min xuyayê..

Siltanê ban dikirê digo:
Mûsa me re, Mûsa me re
Rev ne karê mêra ye
Mûsa were me re
Navê min derketiye bi navê te re,..

Mûs Xaino were me re
Heger tu ê herî
Darê eyneliyê deyne, ji
Dotmama xwe re
Tu ê li binê beriyê
Li qirpînê tifinga
Tu li şerê qîzika kurda binêre...

Mûsa Xain...
Sozê min bi qerarê te re...
Heya erda Şama Şerîf tu herî
Taxa Salihiyê, nav axalerên
Kurdistanê, destê min bi te re...
Heçî ji min û te ji dû sozê
xwe vegerê
Bila kafir bi mire, li ser dînê
bêdîna here...

Bejna Mûs Xainê min zirav e
Darê belalûkê şîn dibû, li
bajarê Diyarbekrê
Li welatê Kurdistanê, li
devê sûkê...
Sitiyê ban dikirê digo:
Mûs Xaino li te zavao, û sala vê
salê li min bûkê,..

Li te hêsîro û li min pepûkê
Xwezila ji xeyra Xwedê ra
Mûs Xainê min li binê
beriyê şerkî giran bikirana
Bila heft sal û nîva di dû ra
Bi destê Mûs Xainê min bi girtana
Bavêtana ser bêlûkê...

Sitiyê ban dikirî digo:
Mûs Xaino!...
Bejna Mûs Xainê
min zirav e, darê vê zeytûnê
Şîn dibû li bajarê Diyarbekrê
Li welatê Kurdistanê
Li ber darê mîrata telefonê....
Li te axao Mûs Xaino û
li min Xatûnê...

Sitiyê ban dikir digo:
Konê Mûs Xainê min li beravê
Mûsa Xain, çogê xwe bide erdê
Qayişa kiçik mozoliyê
Li destê xwe bigerînê
Mîna xortê Kurdistanê
Destê xwe bavê ser darê devziravê
Paketa lêxî, û hesin bavê
Heyanî ko bi ser min û te gihê
Gaziya mala bavî.

Konê Mûs Xainê min ji
Kona der e...
Stûna navê zêrê zer e.
Sala par vî çaxî
Ezê ji qîza qîzek bûm,
Û di mala bavê xwe de bûm
Sala vê salê
Li binê beriyê
Laşê min î nazîk î teze
Kirine nîşana Guleyê zer e...

Porê min î sor î sosinî
Mîna hûrikê zêra
Li binê beriyê
Li tûmê Xernubê digere.
Bejna Mûs Xainê min zirav e
Biya sor e,

Şîn bû li bajarê Kamişlokê
Li ber devê deriyê Qereqolê;
Şîn bû, li zozanê Şerefdînê
Li deşta Hezargolê
Li welatê Kurdistanê...

SEBRIYÊ SERHEDÎ

## ŞER ÈMALA NASIR

De lê lê dayê, Emînê bankir, Hezarê rebenê xezebê por kurê Nûrê Korê şa're...

Lê, lê lê dayê bikin û bilezînin, xwe bi diyarê ser jêr û gira gînin, li serê baxan û beranê mala Nêsir Temaşêkin.

Nemayê ji berê da şerê roja bazarê lehd e, îda fila ye, li boxe û beranê mala Nasir nayê.

Emînê bankir: Hezarê rebenê xezebê porkurê, hêvî sed carî hêvî, kanî û bestê bişêriya şewitî miçiqîne, bîrê Hêlê xwe dane nêvî, ji nîro bi şûnda'li milê tapuyê, li panavê quto li rasta zercelê bêrimê xwînê xwedane qevdê xerzaniyê û qevdê zîvî...

Emînê bankir: Hezarê rebenê, xezebê porkurê Xalidê birayê Hemîdê zava ye, Husnî Nûrî biçûk e segmanê sûstema ye.

Rizgan ji berêda li mala me axa ye.

Hesê bişêrî, bavê Nûrê, maqûlê koma Bişêrya ye. Heçiya Mehemed Eliyê Brahîm, bavê xezebê kinê gurover, qendîla cam iya ye. Kevrê dêra Ermeniya ye, qûça ser şeriya ye.

Çira şev reşa ye, Gameşê gêrra ye, başê canfîdaye, serekê me hemiya ye.

Emînê bankir: Hezarê rebenê xezebê porkurê, Zercel bişewite, bi genim e, ji êvara Xwedê da sûstema mîryê li ser Çoka Mehemed Eliyê Brahîm nalîn û him e Rizganê axê bankir Mehemed Eliyê Brahîm, tu bavê mi bî tu yê îro li dev rûtê.

Mala Nêsir Hilê, hîn nezan in zaran in, bira kozika bi Hemilînin, wek xam cwaniye ser kada teb' û tora ne elimin.

Emînê bankir, Hezarê rebenê xezebê porkurê, şarê lê dayê, dilê mi dilekî li dîn e.

Hûn bi navê Xwedê dikin û dihebînin, hûnê bîskê bikin û bilezînin, xwe bi diyarê ser jêran û gira gînin. Emê bîstekê li şerê boxan û beranê mala Nasir Temaşekin. Ez ne mînim Bişarê Çeto bankir:

(ne qediyaye)

EBDILHADÎ MIHEMED

CÊZAYIR — Serfermandariya frensizî elam dide:di girava Korsê de elemana depoxaneyên xwe ên çek û posatan û şargeh û kar û barên xwe xira dikin û xwe bi şûnda dikişînin,

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## EVE EMERIKE

Êdî miletên ko bi isûlên kevin dixebitin nikarin bibin dewlemend. Genim û pezên ko bê isûl û zanîn çêdibin, xwediyên xwe gelek diwestînin lê dewlemend na kin. Divê zanîn û isûlên nû, têkilî cotkarî, bi xwedî kirin û parastina pez û dewaran bibin, avakirina gund û xaniyan bibin, ev isûl û rêzikên nû têkili medrese û dibisanan, têkilî xwendin û hînkirina zaroyan bibin, vê gavê gula rahetî û dewlemendî, gula azahî û serbestî, gula heq û serfiraziya miletan vedibe. Nesaxî û nexweşî, perîşanî û belengazî ji wan miletan bi dûr dikeve, nikare nîzîkî wan bibe. Miletê Emerîkayê ev tişt gelek xweş seh kirine.



Bi zanîna xwe hinik dar, hesin û kewçûk digihînîn hev û du û ji vê otomobîl, kemyon, traktor û hezar texlît hesincawan çêdikin; hesincawên ko xelkê dinyayê hewcedarê wan in, û bikêrî wan tê...

Ango bi zanîna xwe emerîkanî hem bikêrî miletên dinyayê tên, û hem jî dibin dewlemend. Destpêka vê hişyarî û xurtiyê xwendin e, medrese û dibistan e.

û perîşaniyê xelas ne kiriye.

Dermanê perîşaniyê xebat û zanîn e, jê re, jê pê ve derman nîne. Karxane û febrîqeyên Emerîkayê her sal 3.500.000 otomobîl, 100.000 balafira çêdikin û destgehên di wê di nav du salan de 2.000 wapor çêkirine, her yek ji wan 10.000 ton mezin. Ji zanayê emerîkanî ê mezin Edîson pirsîne; «mirov çawan divê bixebite» wî got: bê ko li saeta xwe binêre.

Kurdên Cizîr, yên axa Berazan û Çiyayê Kirmancan diviya bûn ji qeneve 150 û heta 200 xortên xwe bişînin Heleb, Şam û Bêrûtê, da ko dibistanên mezin de bixwînin, hînî zmanê frensizî û ingilîzî bibin, hînî zanînine hêja hiqûq mihendizî, diktorî bibin.

Wê gavê me dixwest em bibînin ki dikarî bû kurda bieşîne, heqê wan bi xwe, zorê li wan bike. Xortên mîna Osman Haco, Nuredîn Yûsif, ji bona miletê me, ji bona ezmanê Welêt stêr in.

Lê du, pênc, deh ne bes in, 40, 60, 80, 100, 200 divêtin

Milet bi kurên xwe ên hêja û xurt, xurt û hêja ye.



Divê neyê ji bîr kirin ko ji du biran ê bikerhatî, xwenda û hêja ji ê din biqedirtir e.

Di nav miletan de ji, yên xwenda û zana ji ên mayîn xurtir û dewlemendtir in; û miletên xurt û dewlemend, mîna peyayên xurt û dewlemend îşê xwe dimeşînin, kes nikare ta'da wan bike, bi çi awayî heq tête parastin nas dikin, ji ber vê yekê emerîkanî her fîdakariyê dikin û zaroyên xwe didin xwendin.

Kovan û keser, ax û girîn, gilî û l'anet tu kesî û tu miletî ji zivarî û perîşaniyê xelas ne kiriye.

Di Emerîkayê de 170 dibistanên bilind hene û di wan dibistanan de xort hînî diktorî, mihendizî û ilmên mayîndibin. Heçî zana, û xebatker in xurt in, heçî xurt in bi qedr in. Sed xûnkari mitaliê pênc pere xesar ji erdê hilnayînê! Zeman hevalê xwediyê xwe ye.

Ji feqîr û belengaza, ji nezan û beçareyan kes hez na ke. Miletên ko bi zanîn, û hiner, bi xebat û şehrezayî xwe pêk anîne, îro ne be jî sibe digehin miradê xwe. Diz hebe, şevreş pir in.

Sal 1 — Hejmar 23

Duşemb 4 Çiriya Pêşîn 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

HEVALBENDA PÊŞVE DIÇIN

### Eniya Sovyetî

Ordiyên Sovyetî ber bi Mohilev, Gomel û Vitebskê ve pêş ve dikevin. Ava Dnieprê nikarî bû berbehatina leşkerên rûsî bisekinîne. Di dora payetextê Ukranyayê, şaristanê Kiyevê de, şerine zor û xedar çêdibin.

Piraniya erdê Ukranyayê vegeriyaye xwediyên xwe. Yekîneyên sor di axa Rûsya Gewir de ne, û ber bi Mînskê ve dimeşin. Çavên elemana bi kaniyên Qefqasê yên gazê ne ketiye û erdê Ukranyayê a bi ber û hatin jî, ji destê wan derket.

Elemanan dixwest bi zad û dexlên Ukranyayê xelkê xwe û yên Ewripayê bi xwedî bikin. Ordiya Sor bi pêşveçûna xwe a brûskîn, nan û xwarina elemanan ji destê wan bir.

### Şerê Erdê Italyayê

Ordiya brîtanî heşt û ya emerîkanî pênc, ketine Napoliyê. Leşkerên Mareşal Keserlingî xwe ber bi aliyê bakur û rohelatî ve bi şûnda dikişînin. Erdê ko ev çend roj in têde şer çêdibû asê ye. Elemanan pir û reyên vê erdê xira an berhewa jî kiri bûn. Lê gelîltangên Hevalbendan û yekîneyên wan ên zirh û motorkirî, carna bi zehmet û carna bê zehmet di neval û geliyan re derbaz bûne û ketin deşta Napoliyê û pê dewra şerê Italyayê a diwemîn jî, bi serdestî û serfiraziya qiwetên emerîkanî û brîtanî qediyaye.

### Welatperwerên Ewripayê

Di axa Frense, Belçîke, Norvecistan, Holende, Yewnanistan û Yugoslavyayê de, xelk, welatperwer û welatparêz, di pêşiya zorkeriya elemana de betal na mînin.

Rêhesin û depocebilxanan ber hewa dikin, karker û serbestên elemana dikujin û li hin deran ne maze di Yugoslavyayê de, bi rêz û tertîb şerê wan dikin.

### Civaneki Şeserî

Li gora nûçeyên dawîn wezîrên brîtanî, emerîkanî û sovyetî yên dervekariyê li Moskovayê civanekî deynin, û bi karên dinyayê ên eskerî û siyasî mijûl bibin.

### Birmanya û Hevalbendan

Hevalbenda di sînorên Birmanyayê de qiwetine mezin kom kirine. Dema baranên Birmanyayê ber bi xelaseka xwe ve diçe. Tête bawer kirin ko di vê eniyê de û wextekî nîzing de, Japon tiştine ecêb dê bibînin. Di eniya Pesifîkê de paqij kirina erdê Nû—Gineyê ji leşkerên Japona dom dike.

# BOMBEAVÊJÊN HEVALBENDA

## DI SER ÇIYAYÊN ALPÊ RE

CEZAYIR— Bi awakî resmî didin zanîn: ev cara pêşîn e ko bombeavêjên qerargeha Efrîqa Bakurî ên giran, di ser çiyayên Alpê re firiyane, bi ser Germanîstana nîroyî de girtine û şaristanê elemanî Munix bombardiman kirine. Çûn û hatin 2.500 kilomêtir. Jê pê ve bombeavêjên Liberators yên Ordiya Emerîkanî a hewayî 8, di Wîner—Noystadê de li karxaneyên balafiran xistine.

LONDRE— Sê Ordiyên rûsî ên xurt, xwe ji bona êrîşa erdê Rûsya Gewir pêk ditînin, Eleman jî gaziya xwe tînin.

Piştî erdê Rûsya Gewir, erdê Polonyayê destpê dike.

LONDRE— Mihacir bi piranî tên erdê Svîçreyê. Di nav 20 rajên dawîn de 21.860 peya û 960 hêsîr, yên ko xwe ji axa talyana xelas kiri bûn, hatine Svîçreyê.

# DI NAV DEH HEFTAN DE

## Axa Donetz û Ukranyayê Hatine Vegirtin

Di nav deh heftan de Ordiya Sor Orel, Xarkov, Taganrok, Brîansk, Poltava û Smolensk vegirtine.

Elemana ev şaristanên he hemî xurt asê kiri bûn. Di nav deh heftan de axa Donetz û Ukranyayê ji destê Hitler çûn.

Hitler goti bû: Ji bona mezinahiya Welêt ezê du sê milyon xort feda bikim, Wî hêj bêtir da kuştin, lê çi kar kir...

HONOLULU— Danezaneke resmî elam dide ko qiwetên emerîkanî girava Nanumeayê standiye; giravek ji yên Elisê: japona berberiya qiwetên emerîkanî ne kirine.

# NAPOLI KETIYE

## DESTÊ ORDIYA EMERIKANI PÊNC

CEZAYIR—Ordiya emerîkanî pênc, şaristanê Napoliyê standiye.

CEZAYIR— Leşkerên hevalbenda San Ancelo vegirtiye, gehîne keke rêhesinan li rohelatê Napoliyê.

CEZAYIR— Yekîneyên hevalbenda gihane taxeyên şaristanê Napoliyê yên dora bajêr. Ordiya emerîkanî 5 Kastel-lamare standiye, ev avahîgeh ji Napoliyê 17 mîl dûr e; û taxeyên Napoliyê ên dûr li wê dest pê dike.

CEZAYIR— Radyoa Cezayirê dibêje ko: fermandarê eskerên dora Napoliyê, heye ko heta dema dawîn bervaniya Napoliyê bike.

CEZAYIR— Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî elam dide: Ordiya heştemîn di pêşiya berberiyeke sist de, ber ve tê. Ordiya pêncemîn, dijmina ji çeperên wan, yên çiyayên bakur û roavayê Salernê derêxistine û paş ve avêtine; dijmin di erdeke î dûr de xwe bi şûnda dikişîne.

LONDRE— Leşkerên brîtanî gihane palên çiyayê Vezuvê.

# KRAZNAYA ZVESDA

## QALA PERIŞANIYA ELEMANA DIKE

MOSKÛ— Rojnama rûsî «Kraznaya Zvesda» dinivîse: elemana bi qesda sekinandina eskerên me di qeraxên Dnieprê de xebateke zor kirine lê ev tişt ji wan ne hat. Ordiya Sor êrîşên xwe bi serfirazî pêş ve ajotine û pêş ve dajon. Yekîneyên elemanî yên ko dikirin vî aliyê avê de pê bidin erdê, hatine avêtin Dnieprê, û eskerên ko ji mirinê xelas bûne hindik in. Çek û posatine hêja, bi piranî ketine destê me. Eskerên elemanî piştî vê perîşaniyê, xwe ber bi Ninedne-provskê ve bi şûnda kişandine û dikirin li wê kom bibin û xwe pêk bînin, lê pêşmerên me têkilî wan bûne, rahetî ne dane wan û dawî yekîneyine rûsî ên xurt bi ser wan de girtine û ew ji nû ve bela wela kirine. Bazdana eskerên elemanî ji nû ve destpê kir û şerevaniyên elemana ên mayîn bi zehmet li avê derbaz bûne.

WEŞINGTON— Hawîrên agah didin zanîn ko civanê sêserî civanê nimînendeyên Brîtanya-Mezin, Sovyetistan û Emerîkayê li Moskovayê wê çêbibe.

### Di Pêşiyê de

. Pêşiya me de, du pirsên mezin hene. Di Sovyetistanê de şerê Zivistanê û êrîşa Hevalbenda a mezin li Ewripayê,—eniya diwemîn! Hatiye gotin ko wextekî gelek nîzing de hero 1.000 bombeavêj û nêçîrvanên hevalbenda bi awakî heta niha ne dîtî, dest bi bombardimana axa elemana û hêjagehên di wê bikin.

Bi vê qesdê jî, Koma emerîkanî a hewayî heşt hatiye saz kirinê.

### Dawiya Şerî

Her kes ji xwe re di pirse ev şerê he kengê wê biqede.

Mr. Çorçil di gotara xwe a dawîn de gava qala dema qedandina şerî dikir digot: ev şer dikare salekê, an du salên din dom bike.

# HITLER

## Çi Digot-Çiqewimî

LONDRE— Berî salekê Hitler digot: Di axa Donetz û Ukranyayê de me haziriya xwe kiriye û kaniyên wan her du erdan, yên zad û zexîre û madenan, pişta me xurt bikin, zad û zexîreyên xelkê me û ma'denên ko karxane û febrîqeyên me hewcedar in, ji wan erdan wê bên. Ko em carekî ketin Stalîngradê, êdî tu kes nikare me jê derîne. Mr. Çorçil bila Ordiyên xwe bişîne erdê Ewripayê, wextê xwe de ewe bibîne ko eskerên wî nikarin neh saetan di erdê Ewripayê de bimînin.

Gava Hitler ev tişt digotin Romel jî di teni,ta wî de bû, û Romel ji vî civanî hat Efrîqayê û şerê El—Elemeynê destpê kir; elemana diviya bû erdê Misrê zeft bikin; û pê qidreta brîtanî, di welatên rohelatî navîn de xira bibe. Lê îro Stalîngrad, Qahire Skenderiye naye ser zimanê tu kesî.

Di Efrîqayê de girtîgehên hêsîran tejî eleman in, Ordiyên Hevalbendan Napolî standiye. Stola talyanî xidmeta Hevalbendan dike

Ordiya Sor dora Kievê girtiye, ber bi Minsk û sînorên polonyayê ve dimeşe.

# DANEZAN

## KORS TÊTE PAQIJ KIRIN

CEZAYIR — Serfermandariya frensizî li Efrîqa Bakurî, duhî êvarê danezana jêrîn belav kiriye:

Leşkerên me li her derê dijmin bi şûnda zivirandine, û wan ji Asêgehên ko ji bona midafaa Bastiyayê hewce ne derêxistine. Qiwetên me Geliyên San Leonardo û San Stefano vegirtine û ber bi geliyê Temyinayê ve pêş ve ketine. Di nav du rojan de, nêçîrvanên frensiz 17 balafirên elemanî avêtine erdê; 12 mekîneyên me venegeriyane warên xwe.

# DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

De lê, de lê, de lê
Mi dî bû li serê latê
Esker çû taqîbatê
Tu l'ser çavê mi'r hatê
Ezê b' çepilê te bigirim
Xwe bavêm qeza Qirqatê.
De bimeş gewra' m bimeş
Ez xulamê çavê belekreş
Wan birhûyê te yên bi neqş
Roja ko mêrê te bimire
Serê min û te,
L' dinyê bimînin xweş.
Go: îşev şeva sisiya ye
Û dawetek digeriyaye
Dilê mi ket diduyaye
Ezê gewrê birevînim
Ma xwe ne dinya bi dergeye.
Îşev êvara înê
Melê dixwîne yasînê
Memik sêvê Mêrdînê
Xwezla mi b'dilê wî xortî
Ko cotê memka bibînî.
Îşev êvara şebtê
Memik sêvê Mehsertê
De bimeş, gewra m'bimeş
Xulamê çavê belekreş
Roja mêrê te bimirê
Serê min û te l' dinyê
Bimîne xweş.

## DEMA NIHA

### Di Hemî Eniyan De Êrîşên Hevalbendan Dom Dikin

Leşkerên frensizî girava Korsê bi timamî vegirtine. Di Sovyetistanê de pêşveçûna Ordiya Sor dom dike. Di eniya talyanî de Ordiyên 8 û 5 ber bi Romayê ve dimeşin. Refên Hevalbendan bajarên elemanî û nemaz e Frenkfurt bi awakî zor bombardiman kirine. Li pesifikê leşkerên Hevalbendan bi ser girava Bugenvilê de girtine.

# TEMO & ÇELENG

Temo kurê gundiyekî ji gundên zozanan bû, pê dikir sala hijdehan, xortekî çeleng, bi bejn, çav û brû û por reş. Xortekê, di tîpên rûye wî da mêrxasiyê xweya dikirin,

Çelengê jî bi salên xwe ji Temo sê salan biçûktir bû. Ev jî, keçeke spehî, nav zirav, sing bilind, por zer û çav heşîn bû. Ew ji bajêr bû, qîza Rustem xanê ku xwediyê gundê Temo bû.

Rustemxan, her sal havinê li gundê xwe diqedand. Temo û Çeleng, demên zarotiya xwe ên geş bi hev ra borandin. Dema Çeleng sê salî bû, û hê nû bi ser lingan diket, di nav zarokên gund de bê Temoyê şeş salî, hej ne dikir ko bi kesî din ra bileyize. Ji ber ko Temo kurikekî pir xwîn sivik û ziman şîrîn bû. Tev diçûn digerîn, di nav rezan û bexçan de, dirêjahiya rojan li ser cokan û kaniyan, li nav kulîlk û çîçekan, dibin darên meywan da diqedandin, û bi hev ra didan pey kurmê buharê, û qulên çûkan, rojê peyde ji nav dehlan der ne diketin.

Temo û Çeleng ketin nav salan û gir bûn, her mezintir dibûn, hejkirina wan jî ji hev re girstir dibû û dilê wan xurtir bi heve dihatin girêdan, roj bi roj, hevaltiya wan a zarotî dihate guhartin bi dostaniya evînî, lê her du jî, ji hev û du fehêt dikirin ko li pêş hev, wî tişte di dilê xwe da bidin ber rûyê hev. Çend û çend Temo ji xwe ra digot: «Vê carê ezê ji mehbûba xwe ra komeka ha bibêjim: lê Çeleng, heye ko em ji hev û du re bin»? Gava bi diyarî hev diketin, Temo dil dikir a di hundirê xwe da bibêje; lê canê wî dilerizî, rûyê wî sor dibû, û berê xwe ji wê badida, Çelengê jî ew halê ha seh kiri bû, heyanî rojekê ceger hate wê û gote wî: Temo! ey hogirê min! te xêr ê!? gotina xwe bibêje... blê-naya di hundurê xwe de rake...! Temo berê xwe da wê, li çavên di rengê ezmanan da nêrî û got: «Çeleng... belê hey Çeleng... heye ko em ji hev re bin, û heya mirinî bi hev re bimînin?»— Çelengê lê vegerand: belê ez benî, erê yaro gerek ûsa be.

Temo dest avête gulekî û çinî, û gote Çeleng: eve, eve qelenê te ê pêşîn, Çelenga min, xweha zarotiya min, hevala ciwaniya min, ortaxa jiyîna min, û gul xiste destê wê ên nerm û givaşt.

Çelengê rojên dibistana xwe timam kir, her kes ji xelkê bajêr dihat û destê wê ji bavê wî dixwest, û hemû ji serek û mezinên kurdan bûn. Her xwezgîniyek nû dihat, bavê Çelengê derbas dibû cem wê, şewra wê dibir û jê pirs dikir: Keça min î delal, filan kes tu ji kurê xwe re dixwaze, tu çawan dibînî? Her dem qîzê-bi fedî- lê vedigerand û digotê: «nê bavo, no navêm bi mêr bibim;»

(ne qediyaye)

SUBHIYÊ DIYARBEKRÎ

## Strana Kurdî

### BAZO

Bazo, Bazo
Li me hatî, danê êvara;
Sihê diyara
Xwe berda kokê zinara,
Xwezî hakîmkî adil
Di welatê me rabûna
Bila bi çeplê jina qenc bigirta
Bila berda ji kotî pîsa
Ji mirdala...
Bila bida çeleng siwara
Stranvana...
Bazo, bazê min o!
Rubnîka her du çavê min o!
Ji war ocaxê mala bavê mino
Bazê xelkê te bejin zirav o!
Ji terha benkê.

### AXAO!... AXAO!...

Axa o!... Axa o!...
Biçûk o, xeşîm o, nûgiha o!
Rêsê mehkûma û çetao!
Eşîra giran jê bi şûnda ma o!
Kaniya Hewrizê bişewite
Ji kula dilê min re
Wa bi dar û dirî
Mi dî Şemsê bi sê dengadikir gazî
Ban dikir Qenco, bira o...
Firqe qomandarê dewletê
Li wî gawirê Şefqekirî
Mi dî Qenco bi sê denga kire gazî
Ban dikir Şemsê porkurê, nemayê
Rab' berê xwe bidê Mêrdînê xopan
Cem mala Şêx Tahir
Şêxê Ensariya, here gilî
Tu a bibêjî Şêx Tahir
Kuştin Eliyê Ehmed
Beranê poşek, gameşê tirka
Beranê soring-kirî
Ez ne ketime ber heyra malê dinyayê
Ez ne ketime ber heyra kuştina mêra
Heyfa min tê li wê heyfê
Çawan çira mala bavê min
Ji êvara Xwedê de vedimirî...
Axa o!... Axa o, biçûk o, nû giha o
Kevirê şîfê dêrê ermeliya o...

### HELÎMCANÊ

De can bi can be, Helîmcanê
Ê lê Helîmcanê
Heyran, ez ne tî me
Û ez ne bir çî me
Ez li ber sihka Bedlîsa hopan
rûniştîme
Ê lê Helîmcanê
Heke tu avkişênî, ez gelekî tî me
Heke tu nanpêj î, ez birçî me
Heke tu sing firoş î, ez mişterî me
Heger tu na firoşî
Roj hezûra heq
Ezê li ser pela selatê
Destê min û dawa te
Ezê li Helîmcana xwe de'weçî me
De can bi can be, Helîmcanê
Bav kopekî mêr xulam î
Ê lê Helîmcanê ez bi heyran
Bedlîs bi şewite wa li wê ye
Heyfa min nayê li ser malê dinyayê
Evê teresê polîs destê min girêdanê
Berê min dan mîrata eskeriyê,
Ez ne ketime ber wê heyrê
Çawa mi dî cewaba nexêrê
Ji mi're tê ye
De can bi can be, ê lê Helîmcanê
Bav kopek î, mêr xulam î.

## PÊJINÊN DINYAYÊ

### CENG & BIHINGEH



General Şadebek de la Valad, Serfermandarê Qiwetên Frensizî Li Erdên Rohelatê Navîn û Serekcimhûrê Libnanê Mîrza Bişara El Xûrî



Gernasiya Cengkeştiya Frensizî Akonit, Ya Ko Di Nav *Sê* Çar Deqîqan De, Du Noqavên Elemanî Xeriqandine; Noqavên Ko Destriyora Brîtanî Harvester Da Bûn Ber Torpîlan. General De Gol Bi Dana Nîşanan Qedrê Qomandar û Deryavanên Wê Waporşerê Frensizî Griye.



Şervaniyekî Frensiz; Lebatek Ji Qomandosên Frensizî Yên Ko Bi Ser Girava Korsê De Girtine û Niho Erdê Ve Giravê Ji Elemana Paqij dikin.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

1ère ANNÉE — LUNDI 4 OCTOBRE 1943 — NUMERO 25

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

La grande retraite allemande continue sur tous les fronts. Certes, cette retraite que la propagande allemande s'attache à présenter comme voulue et préparée est en effet nécessaire. L'effondrement de l'Italie, la nécessité de consacrer au front occidental un nombre imprévu de divisions impose à l'état—major allemand de céder du terrain devant l'irrésistible poussée russe pour éviter un nouveau Stalingrad,

Les armées russes investissent méthodiquement la ligne du Dniepr la bataille pour les passages du fleuve a même déjà commencée L'Armée rouge a remporté un important succès en prenant d'assaut Kremenchoug. L'assaut de Kiev se prépare. Plusieurs iles fortifiées situées en face de la ville ont été conquises par les troupes russes.

Toutefois, l'effort essentiel de l'Armée Rouge semble être dirigé au centre. contre les bases de Vitebsk, Moghilev et Gomel. 50 divisions russes avancent dans ces trois secteurs contre les lignes de défense allemandes qui protègent Minsk, capital de la Russie Blanche. Déjà les villes de Roudina en direction de Vitebsk et de Krichev en direction de Moghilev ont été prises; quant à Gomel, menacée de trois côtés, sa chute paraît inevitable.

Une parcée russe dans ce secteur aurait des conséquences désastreuses pour l'ensemble du front et l'Etat-Major allemand est décidé à l'empêcher à tout prix. Il s'agit pour les Allemands d'éviter des évènements irréparables avant les pluies d'automne qui ralentiront nécessairement les opérations.

ooo

En Italie, la nature même du champ de bataille étroit et montagneux offre de bonnes possibilités de défense. Mais ces avantages sont en grande partie compensés par la supériorité aérienne des Alliés. La prise de Foggia, centre aérien le plus important d'Italie doit être consideré comme un des succès les plus importants des derniers jours. La possession des bases aériennes entourant cette ville permettra, sans doute aux Alliés d'accélerer le rythme de leur offensive, et, après la prise de Naples qui a permis aux anglo américains de déboucher sur la plaine du littoral, d'utiliser toutes les ressources de leur armement motorisé.

**INTERIM**

*Provisoirement,* LE JOUR NOUVEAU *paraît chaque Lundi.*

## LA LITTERATURE COMME BASE DE LA VIE NATIONALE

### UN ESSAI SUR LA LITTERATURE TCHÉCOSLOVAQUE

Par **V. ALES**

*La survivance, à travers les siècles de luttes, de souffrances, et d'oppression, de la littérature tchécoslovaque est l'un des plus remarquables phénoménes de la culture européenne.*

*La production littéraire tchéque — car jusqu'à la premiêre moitié duXIXe siècle il n'y avait pas une littérature slovaque séparée, les auteurs également slovaques écrivant en tchèque— la production littéraire tchèque commença à XIe siécle. Jusqu'au XVe siècle, c'étaient les ouvrages religieux et moralistes qui prévalaient dans la littérature tchèque. Le célèbre réformateur Jan Hus / lire; Yan Houss; 1369— 1415 /, patriote ardent et fondateur de l'orthographie tchèque moderne, est le plus éminent représentant de cette période-*

*Le XVIe siècle, «l'âge d'or de la littérature tchèque», est caractérisé par des œuvres en prose,ouvrages historiques et relations de voyage, mais aussi par une traduction splendide de la bible la bible de Kraliky /, un trésor de la pure langue tchèque au cours des siècles tragiques à suivre.*

*En 1621, les tchèques ont perdu leurs indépendance et furent exposés à une terreur sanglante infligée par la dynastie germano-autrichienne des Habsbourgs. Cette oppression était très semblable à l'asservissement nazi de nos jours.Or, c'était juste au cours de cette période que la nation tchécoslovaque a produit l'un de ses écrivains les plus grands et les mieux connus dans le monde entier: c'était Jan Amos Komensky / lire : Yan Amoss Komènsky; 1592 — 1670/ ' mieux connu à l'étranger sous les noms de Comène ou de Comenius. Passant la plupart de sa vie en exil, il est devenu un philosophe éminent et le fondateur de la pédagogie moderne] il est souvent appelé «l'instituteur des nations» /.*

*La terreur habsbourgeoise a causé une decadence de la littérature et même de la langue tchèque. Une renaissance n'a commencé que plus d'une centaine d'années plus tard, vers la fin du XVIIIe siècle, quand le régime politique devenait plus libéral, sous l'influence des idées nouvelles françaises et anglaises. Alors, les tchécoslovaques recommencèrent à cultiver leur langue et leur production littéraire. Cette renaissance culturelle était le début de la renaissance politique également: le développement politique d'aucune nation n'est tellement influencé par sa littérature, par sa vie spirituelle, que le développement de la nation tchécoslovaque. Tandis qu'ailleurs la culture est souvent le produit du bonheur politique, chez les Tchécoslovaques les deux vont toujours ensemble et, souvent, toute la vie politique, toutes les aspirations nationales sont directement basées sur la vie spirituelle, sur les tendances morales et culturelles propagées par la littérature, Le début de cette renaissance nationale tchécoslovaque est marqué par les noms de plusieurs savants : du philologue Josef / lire ; Yosêf: Dobrovsqy / 1753 — 1829/ . du philologue et historien littéraire Josef Jungmann /lire : Yosèf Youngmann; 1773 — 1847 / et de l'historien P.J. Safarik lire; Chafarjik; 1795 —1861 /. L'historien Frantisek Palacky / lire: Frantyichèk Palatsky; / 1798—1876 / était non seulement un savant de rang, mais aussi le fondateur de la potitique tchèque moderne; son peuple reconnaissant l'appelle «le père de la patrie». Le poéte le plus distingué était Jan lire : Yan / Kollar /1783 — 1852), un Slovaque écrivant en tchèque, maître d'une poésie panslave romantique et visionnaire. La poésie du peuple a inspiré Frantisek ] Ladislav Celakovsky ] lire: Frantyichék Ladislav Tchélakovsky ; 1799 — 1852 ] et Karel Jaromir Erben ] lire ; Karel Yaromir Erbèn : 1811 — 1870] les ballades d'Erben ] lire : Erbèn donnent même à présent une impression complétement moderne et peuvent être considérées comme le chef-d'oeuvre classique de ce genre dans la littérature tchèque- Cette première période de la poésie tchèque moderne culmine avec le byroniste Karel Hynek Macha ] lire: Makha; 1810— 1836 ], le fondateur de la poésie lyrique, et avec Karel Havlicek-Borovsky ] lire: Havlitchék-Borovsky; 1821—1856, le fondateur de la poésie satirique et en même temps, le premier grand journaliste tchèque, mort comme victime de la persécution habsbourgeoise,*

*Vers le milieu du XIXe siècle, la littérature tchèque avait dépassé sa période rudimentaire. A partir de ce temps-là ; nous ne suivrons que la belle littérature, sans pouvoir, dans un court essai, mentionner le développement rapide de la littérature scientifique de toutes les branches. Mais. quand même. il faut citer au moins un nom le plus noble de tous: celui du Thomas Garrigue Masaryk ] lire: Tomach Garrigue Massaryk; 1850—1937], philosophe profond, l'un des plus grands théoriciens de la démocratie dans le monde entier, chef moral et politique de sa nation et qui exerçait dans le XIXe ainsi que dans XXe siècles. une immense influence sur sa vie spirituelle et publique et était enfin le premier président, le Président-Libérateur, de l'Etat tchécoslovaque renouvelé, de la République Tchcoslovaque.*

*La belle littérature tehêque, la prose ainsi que la poésie, restait toujours inséparablement liée avec la vie du peuple/ avec son patriotisme, avec son sentiment social et avec son démocratisme profond. Presque tous les grands hommes de la nation, et les écrivains surtout, provenaient des classes des gens simples, des paysans, des petits bourgeois, etc ../, et le caractère de la littérature prouvait qu'ils n'oubliaient jamais leur origine. Le roman «La bonne-maman» par la femme écrivain Bozena Nemcova ] lire : Bojèna Nyèmtsova; 1820—1862], était le premier chef-d'oeuvre moderne à être traduit en plusieurs langues étrangères et à gagner une renommée mondiale; c'est une déscription réaliste et idyllique en même temps, de la vie des paysans. Le plus profond écrivain de cette période était Jan Neruda ] lire: Yan Nérouda; 1834—1891], en poésie le Heine, en prose le Dickens tchèque. La poésie sociale a trouvé son premier grands représentant dans la personne de Svatopluk Cech ] lire: Svatoplouk Tchèkh 1846—1908], avec ses pathétiques «Chants d'un Esclave». Or, la période culmine par le poète Jaroslav Vrchlichky ]lire : Yaroslav Vrkhlitsky; 1853—1912] qui, à part d-une production originaire incroyablement riche, était le traducteur magistral deDante, d'Ariosto, de Tasso, de Shelley, de Victor Hugo, de Camoens, de Goethe, de Whitman, de Calderon, de Mikiewicz etc etc..., contribuant beaucoup au développement de la langue poétique tchèque moderne.*

*Vers la «fin-de-siècle» et au début du XXe siècle; le roman tchèque continue à décrire la vie de paysans, d'ouvriers. de petits bourgeois, Ce roman réaliste, influencé beaucoup par les écrivains français et russes, a trouvé son meilleur représentant dans la personne de Karel Matej Capek—Chod ] lire] Karèt Matyéy Tchpèk-Khodd; 1860—1927], Mais aussi le roman historique fut beaucoup cultivé, et son premier représentant, Alois Jirasek ] lire: Aloïss Yirasèk; 1851—1930] a par son œuvre littéraire largement contribué à la force morale de la lutte du peuple tchécoslovaque pour la délivrance du joug étranger. Signalons encore le roman lyrique, et la fine poésie, de l'auteur subtil Frana Sramek ] lire : Franya Chramèk; né 1877 ].* (A suivre)

## POEME MODERNE TCHECOSLOAVQUE

### Le chant des Emigrants

Par JAN SMRAK

Combien sont ils qui partent
Pour sillonner le ondest
Leurs chansons d'émigrés
Résonnent à la ronde.
Les uns peinent déjà
Dans les pampas sauvages,
D'autres ont des chevaux
Et d'autres des plantages.
On se plie avec peine
Au parler étranger,
Tandis qu'à la lueur d'une veilleuse
La langue maternelle
Est comme un ostensoir
Et chante pour eux
Saintement le soir,
Sa musique joyeuse,
Sur un navire, scie immense,
Qui tranchait sans vibrer
L'Hymalaya des flots,
Des jours, des nuits,
J'ai navigué jadis.
Ce que l'homme détient
De divine puissance
Dans sa terrible main,
Alors je l'ai compris,
J'étais debout sur le vaisseau,
Lorsque le vent m'a cinglé,
M'imprimant son terrible sceau
Pour que je m'en souvienne encore
Dans mes montagnes,
Chauffeur qui bourre
Le four de charbon,
Ton épaule est de plomb,
Tes bras de fer,
Quand ils s'efforcent.
Si j'étais jeune comme toi,
J'unirais ma force à ta foree
Pour faire tourner les hélices,
Trop délicat pour que je puisse
M'unir au rythme des machines,
Indolemment je m'achemine
Vers le groupe des émigrants
Qui jettent par dessus les ondes,
Semblables aux blanches colombes
Leurs tristes chants,
Voilà ceux qui vont en avant.
J'offre à l'écume mes paupières,
Jetant la fleur marine au vent,
Suprême adieu
Du pays de mes pères.
Tordant sa queue
Etrange de baleine,
Le bateau vogue vers le port,
Les mères se signent alors,
Les épouses baissent la tête.
Lorsque les dernières fumées
S'élèvent au-dessus des flots.
On dit adieu aux matelots,
Et ce choral tout nostalgique
Se confond avec l'ouragan
Qui tourmente le Pacifique.

*Jan Smrak / lire: Yan Smrèk/, né 1898 peut être considéré comme le plus important des poêtes modernes slovaque, Ses vers sont marqués par beaucoup d'inquiétude — son premier livre, publié en 1922, porte le titre caractéristique : «Condamné à la soif éternelle». C'est un poète d'un talent lyrique spontané et d'un sens admirable du rythme.*

ALGER (A.F.I.)— Le Haut-Commandement Français a publié hier soir le communiqué suivant:

«Après la libération totale de la Corse, nos troupes procèdent au nettoyage des mines et autres engins destructeurs posés par l'ennemi. Les Allemands ont abandonné un matériel de guerre considérable, des vivres, des tanks et des munitions.

Nous avons fait plusieurs centaines de prisonniers».

BERLIN—La radio allemande signale que les Alliés utilisent maintenant un nouveau type d'avion pour les attaques à basse altitude.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

##  EVE EMERIKE 

Ev çend car in, me di wan rûpelan de li ser Emerîkayê nivîsiye û bi çend pirsan qala rêzik û tevger û qidret û mezinahiya wî welatî kiriye.

nahiyê. Hemî miletên cihanê wilo kirine, divê em jî wisa bikin.

Şandina zaroyan medrese û dibistanan tiştekî zehmet e, qiwet jê re divêtin.



Ji bona xurtî û mezinahiya miletan reyek heye, ev jî riya xwendin û zanînê ye, hemî miletên dinyayê ên zexim têre derbaz bûne û gihane miradê xwe.

Miletek bê ko zaroyên xwe bişîne medrese û dibistanan, bê ko xortên vî miletî bibin zana û şehreza, bibin seyda, diktor, mihendiz ewikat, zabit, nikare bigehe mezi.

Lê herwekî bê fidakarî tu tişt naçe serî, dê û bav, heke hewce bû divê ji nanê xwe kêm bikin û zaroyên xwe bişînin medresê.

Miletên dinyayê hemî ev tişt kirine, Emerîka bi destê dê û bavên wilo de, bûye ev Emerîka.

Stûnên xurtiya miletekî dido ne: yek zanîn a din mêranî.

Xwedê ji kerem û comerdiya xwe mêranî da me, divê em jî bi namûs û xeyreta xwe zanînê bêxin destê xwe, wê zeft bikin.

Wê gavê di nav miletan de em jî dibin miletkî, û di nav peyazan de peyayekî; em jî dibin peyayên serbest.

Piştî şerê mezin ê berî yê sala 1914-1918 an, Emerîka, Frense û Brîtanya-Mezin dixwestin hemî miletên dinyayê bigihînin serbestiyê.

Heqê miletê me jî hatî bû nas kirin; lê em ne ev mirov bûn ko serbestiyê bi destê xwe xin. Çire? Ji ber ko em nezan bûn, me heqê xwe nas ne dikir.

ooo

Îro Emerîka ji nû ve ji bona azahî û serbestiya miletên Cihanê, —biçûk û mezin tev de— ketiye şer. Heft milyon xortên Emerîkanî bûne esker.

Karxane û Febrîke, û destgehên emerîkanî, bi şev û ro dixebitin, çek û posat, sileh û cebilxane, tang û balafir, cengkeştî û gemiyên barkêş çêdikin. Çar milyon ingilîz ji ketine eskeriyê, li hewa û di reşayî û behrê de, bi egîdî şerê dijmina dikin.

Bîst milyon eskerên Ûris, eleman dane pêşiya xwe dişkînînin. Xwîna însana mîna av diherike, agirê gulle û bomban qiyamet radikin.

Xortên dinyayê ên hêja û xwenda ji bona azahî û serbestiya miletên xwe dixebitin, şer dikin û canê xwe didin kuştinê, û di vê xeyret û xebatê de jin û mêr dest-biratiya hev û du dikin!

Gelî Kurdan... Zaroyên xwe bişînin medrese û dibistanan, û heke hon bi xwe mezin bûne û êdî nikarin herin dibistana, ji qene ve hînî Xwendin û nivîsandina zmanê xwe bibin. Zmanên miletên mezin bielimin hînî ilm û hineran bibin.

Ev e riya xelas, serbestî û mezinahiya me.

# ŞERÊ MALA NASIR

2

— EBDILHADÎ MIHEMED —

Hecî Mehemedê Mistê Reşkotî mêze ke, pênc siwar ji jêlî tên û dilezînin, yek Xalid e, yek Hemîd e û yek Husnî ye û yek Rizgan e,

Mi tu carî derbê giran ji destê wan ne dîne, hema bi tirs e ji siwarê şîn bozê siwarê pêşîn e.

Ez Nîşanê wî ji te ra hildim, wa ya Mehemed Eliyê Brahîm e bavê xezebê kinê gurover e.

Rojê yoxulmê giran bi ser kozikê lawê bava de, dicadînê, kozê kurê bava daîm bi ser da hildişîne.

Rojê yoxulmê giran daîm sûstemê mîryê ji destê kurê bava derdixîne; îro mêr be nava xwe bi şidîne, pa bi qedrê Xwedê bî, em îro of û xweşya xwe ji destê bavê xezebê nabînin.

Emînê bankir: Hezarê rebenê xezebê porkurê îro şer çiya li mala bavê min û te şer bi dûr kir şahidê Mehemed Eliyê Birahîm bavê xezebê gelek hene bi welfinê lawê bava re bi Holbûnê çeff û egala re bi urtînê, gamêşê gira re rahişt nava xerzaniyê hucûmî ser koza Hecî Mehemedê Mistê Reşkotî kire.

Kulo Xwedê bi kul bê tê keve mala Hecî Mehemedê Mîstê Reşkotî û ev dulezîzê ba fîle û Eliyê lawê Cibo gulakê lêxistine li bejna Mehemed Eliyê Birahîm li Hêla rastê perçê cegerê bi qolonve sor kirine.

Emînê bankir: Nûrê karê çira mala Nasir tefandine, ûcaxê mala Nasir ji binîda Kul û Kar kirine.

Emînê bankir: Hezarê Rebenê çi bû çi ciriya: roj di nîro da şikîya ber û barûdê segmanê mala Nasir lê qediya, îşev ez raketim mi xewneke nexêrê dîbû, mi dî govendek bi du def û bi du zorna li hêşiya mala bavê min û te di geriya.

Mi dî serê çar Boxê û Berana di qazana mala bavê min û te da, di qazanê holiyê bol û fire da bi xwe dikeliya; şahidê Mehemed Eliyê Birahîm bavê xezebê gelek hene. ji nîro bi şûnda li mifê tapuyê hucûm kir ser kozikan û gelek tabûya bi kersîxê xencera tev alî yan.

Emînê bankir: Hezarê dêranê, xezebê porkurê, xwezî berê rokê pêşîda ez bi çûma bajarê qoce Erziroma şewitî, ser dikanê taciran û va miqsîya: min ê bazar kira ji qîz û Bûkê mala Nasir ra şe'ran û temezîya minê ji her çar beranê mala Nasir ra bazar kira qeytanê Kurka zencîrê saeta û Kostekê şeş agira. Cebil-Xanak du du derbê canfîdîya şahidê Mehemed Eliyê Brahîm bavê xezebê gelek hene, nala zêrkî ji zêrê mehmûdî tu ba vî nav koma van mecîdiya, nala berankî ji beranê.

Rizayê Xalid tu todekî soringi ke qenarkî bibire çelê mubareka havînê li Bingola şewitî li şeref dînê berde nav mîhê lebençîya.

Ez îm, sed carî bi min ez im Bi şarê Çeto bankir Hecî Mehemedê Mistê Reşkotî go-mere Xulama Xwedî nake, di ser evdulezîzê ba fîle re ew cwanmêra ji berêda siwarê kuheylanê nêr e.

Mêzeke îro sê re sê şevê wî qediyane, fîle lawê fîle li şûna Kozikê mala Nasir rûniştîye, gullê li şûna gullê na guhêze. Emînê bankir: Hezarê dêranê xezebê porkurê Zercel bi şewite bi darê te re şahid û şuhûdê bavê xezebê gelek hene. Bankir Rizganê axa Keko bi qesem be ez îro ji ber Bişarê Çeto û Hecî Mehemedê mistê Reşkotî Îsayê Mîrze nefîr ama welatê jorîn tev nagerim.

Emînê bankir: Hezarê rebenê bira Kula Xwedê tê keve mala hecî Mihemedê Mistê Reşkotî Nefîr ama î mezin kuştine Xalidê bira û Rizganê axa bi duwazde gula birîndar e û qapaxa qafê Hemîdê zava li erdê ye, dev na gere ez çibikim kozika Mehemed Eliyê Brahîm lê teng bûye, enextar di destê Mehemed Eliyê Birahîm da dîle tûtik lê da asê bûye pê nabe şere.

## SPAS

ARÎKARÊN ROJA—NÛ

Bi destê Seydayê delal Ebdilhadî Mihemed pereyên jêrîn ji me re hatine şiyandin, em ji dil spasan dikin.

Mîrza' Hac Hemo 50 lîreyên sûrî M.M. Mehmûd Hiseyn, Sileyman Hac Hersan, Mecîd Hemî, Mihemed Ezîz, Hiseyn Brahîm Çolî, Şêx Mûs Yûnis, Hesen Erslan, Hesen Mihe, med Xello, Mela Salih, Ferec axa Hac Yusif, her yek ji wan 10 L. S. û Mîrza Hac Brahîm 5 L.S. dane.



Ştola Emerîkanî Di Behra Pesifîkê De

Sal 1 — Hejmar 24

Duşemb 13 Çiriya Pêşin 1943

# ROJA NÛ

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

DEMÊN GIRAN

### Şerê Dnieprê

Ordiya Sor di peravên Dnieprê de cih li elemana teng kiriye. Di direjahiya vê eniyê de — 1.700 kilomêtir— dû milyon şerevanî bi çek û silehên nû û nûjên, û bi arîkariya tang, top balafir, mitralyoz, agiravêj û qumbereavêjên çeperan — kes êdî qala tifing û şeşderban na ke — ketine sing û qiriqên hev û du.

Eleman bi qesda sekinandina êrîşa rûsî a xedar û bê-eman, bombeavêjên xwe û balafirên ko bi serîkî direjî neyarên xwe dikin, tînin qada şerî û têxin qomandê.

Lê çekê rûsî ê hewayî bernade ko refên elemanî bigehin armancên xwe, pêşiya wan digirin û wan bela wela dikin.

### Leşkerên Rûsî

Kaspliane vegertine û gihane pêşiya Vitebskê.

Elemana bi qesda rakirina serpira rûsî a Perayaslavayê, bi arîkariya 80 tangan, 14 caran ber êrîs kirine; bêfeyde, Ûris pêdane erdê dora serpira xwe, piştî şkênandina êrîşên elemanî; hêj firehtir û qaimtir kirine.

### Di Niro-Rohelatê

Kremençugê de gund û avahîgeh bi sedan ve ketine destê Ordiya Sor. Çeper û penahên elemana yên aliyê Dniepropetrovskê di tengiyê de ne. Der khergirava Tamanê de, leşkerên rûsî, gihane peravên roavayî û niho li Erdê Qrimê dinêrin.

Êdî eşkere dibe ko pûk û badev, ba û baran, berf û qeşa ne xema Ordiya Sor e. Serfermandariya rûsî top û cebilxane, zad û xwarin, hûr û mûrên eskerên xwe bi traktoran neqil dike, traktorên ko xema herî, riyên xirab û çem û robara naxwin, li ser wan re bê zehmet diborin û her tiştê ko hewce ye digehînên şerevaniyan.

Ji aliyê din Serdariya Sovyetî di erdên nû vegirtî de, qerargehên xwe daniye, ew saz kiriye, pêk aniye û erdên pişteniyan de, her tişt bi rêz û tertîb çêdibe.

Kelehên Gomel û Kiyevê dibin derbên Ordiya Sor de dilerizin.

### Niho Gatinên

Generalê elemanî Dîtmar û kapîtên Sertoriyus hêj çêtir têne seh kirin. Wan di Radyoa Berlînê de dig ot rojên hêj reştir û girantir bi ser me de bên.

Di eniya Dnieprê de êrîşa dîroka cihanê a mezintir çêdibe û bi çavsoriya ko heta niha ne hatiye dîtin û bihistin.

### Bombardimanên Dawîn

Refên Hevalbendan her car bi awakî hêj xurtir bajar û şaristanên Germanistanê bombardiman dikin, Bremen, Emden, Munix, Frankfurt, Stutgart Darmstadt, Hanovir, Berlin û zehf bajarên elemanî ên din derbine dijwar xwarine. Di şerekî hewayî de,—şerê hewayî ê mezintir—bombeavêjên emerîkanî ên gir kelehên Firok di ser Bremenê re 142 nêçîrvanên elemanî xira kirine. Bi wan bombardimana destgeh û febrîqeyên elemanî—can û qiweta şerî—xira dibin, stasyon û rêhesin dipelixin, bajar dişewetin, xelk bê ban û serban, bê cot û coleba dimînin, û dikevin bin lepê zîvarî û perîşaniyê.

### Di Pêşiya vî Halî De

Hitler dibêje xelkê xwe: Veger ne maye, çekê xwe xweş bigirin, xwe sist ne kin, divê em heta bihna dawîn şerê neyarên xwe bikin; an mirin an serûrazî.

### Eniya Talyanî

Ordiya emerîkanî pênc, û ya brîtanî heşt di Volturno û Termoliyê de serfiraz bûne.

Yekîneyên emerîkanî li ava Volturnoyê derbaz bûne û şerê Romayê destpê kiriye. Li Termoliyê, leşkerên General Montgomerî, zora elemana birine û hilkişiyane serê ciyayên talyanî. Pêşveçûna her du Ordiyan dom dike.

## GOMEL & KIYEV

### Pêşveçûna Ordiya Sor a Brûskîn

MOSKÛ— Ordiya Sor gihaye pêşiya Gomel û Kiyevê.

LONDRE— Emîraliyên brîtanî û emerîkanî pev re danezanek belav kiriye; têde hatiye gotin: meha borî noqavên elemanî nikarî bûn waporekê me jî bin av bikin, li 29-ê îlonê 15 noqavên elemanî direjî qefle waporekê me kirine û ji gemiyên ko ev qefle dihemandin sê heb û çend barkêş xeriqandine. Qiwetên me nivê noqavên dijmina şiyandine binê avê.

Her wekî her du emîralî dizanîn ko elemana ji bona êrîşa noqavan î mezin haziriya xwe dikin, wan jî xwe pêk anîne û debarên ko hewce ne kirine.

LONDRE— General Îker, lebatek ji çekê emerîkanî ê hewayî di Londrê de peyiviye û gotiye: Qesda me, û a refên brîtanî di zivistana ko bê xirakirin, pelixandin û hilweşandina kar û barên elemana ên eskerî û pir û rê û rehêsin û trên û hêsincawên wan yên çûn û hatinê ye; heta ko dema vegirtina axa elemanan de xesarên me zehf ne bin.

## KARDARIYEKE SOVYETI

### A MEZIN JI 55 LEBATAN BIHEVKETI

LONDRE— Ûris zehf bala xwe didin civanê Hevalbendan ê Behra Spî; û ev tişt ji piraniya nimînendeyên ko dişînin Cezayîrê xuya dibe. M. Bogomonov yê ko îro wê bigehe Cezayîrê, nimînendeyê Sovyetistanê li ba Komîte frensizî a xelasiya welêt e; pê re 25 pispor û karker hene. Di wextekî nêzing de M. Vîşinskî wê bê Cezayîrê; komî serê bi ser xistî yê wezareta sovyetî ê dervekariyê; ev serekê kardari ya sovyetî ye, li civanê Behra Spî, ev kardarî ji 30 lebatan bihevketî ye. Bi vî awayî 55 nimînendeyên rûsî dê bikevin Civanê Behr Spî.

## 6.000 BALAFIR

### Di Nav Deh Mehan De û Bitenê Li Eniyekê

CEZAYIR —R: Ji wextê ko qiwetên Hevalbendan pê li erdê Efrîqa Bakurî kirine — 8-ê kanûna pêşîn 1942 — û heta niha, di eniya Behra Spî de 3.461 balafirên Mihwerê hatine avêtin erdê û 2.600 heb jî di dema pêşveçûna leşkerên Hevalbendan de, der balafirgehan hatine standin. 880 balafir li qerargehên talyanî, 600, li Tûnise; û 1.100 li Sicilyayê ketine destê Hevalbendan.

## STOLA FRENSIZI

CEZAYIR— Emîral Lemoniye, serekê şerdariya behriya frensizî, di civana rojnamevanan de gotiye: 300.000 ton mezin cengkeştiyên frensizî û 53.000 deryavan îro di tenişta hevalbendan de, şerê dijmina dikin.

CEZAYIR— General Jiro di Oranê de çavê xwe li yekîneyên Ordiya frensizî gerandiye û îro vegeriyaye Cezayîrê.

MELBURN— Qerargeha Hevalbendan a mezin li Pesifîka nîro roavayî dide zanîn: leşkerên emerîkanî Vîla vegertiye.

## DANEZAN

LONDRE— Wezareta brîtanî a hewayî dûhî êvarê elam daye: Muskitos û Bostonên me, elektrîk xaneyên erdê Frensê dane ber bomban. Refine din li hêjagehên erdê Parîsê ên eskerî xistine. Bîst nêçîrvanên dijmina yên ko dikirin pêşbiriya refên me bikin hatine avêtin erdê.

Jê pê ve bombeavêjên me Tîfon, di penaha nêçîrvanan de, der Flesingê, zora xwe dane çûn û hatina gemiyên dijmina. 4 bombeavêj û 9 nêçîrvanên me venegeriyane waren xwe, lê du balafirvan di selametiyê de ne.

Duhî di ser axa Frense û Holendayê re 24 mekîneyên dijmina hatine xira kirin.

CEZAYIR— Radyoa Cezayîrê banî xelkê Frensê dike û dibêje:

Frensizinol dema azahî û serbestiya Welêt nêzing dibe; lê tiştine giran hêj di pêşiya we de ne, divê hon roj berî rojekê jin û zaroyên xwe bişînin gundan, ava bîgehên dûrî bajarên mezin; û vî tiştî zû pêk bînin, ko carekî qewimî êdî rê pê na keve.

Qewil û Ayîn

### QEWILÊ PEXEMBER

Emê bêjin medhê resûl
Yareb hêvya me bike qebûl
Ko em di heşrê da ne bin zelûl
Zelûl ne bin l' qiyametê
Em jî tebayê Ometê
Mihemed şefîhê Ometê.
Roja heşrê rojek teng e
Erd û ezman li me da deng e
Li me gunehkara ne ma reng e
Kes barê kes hilnagirê
Ji xeynî Mihemed Mistefa.
Dinya bû heftî û du refa
Xwezil bi sefa Mihemed teba.

### QEWILÊ BER EREBANI

Tirba min î çend î direj e
Marek tê de kher û gêj e
Dayim dixwe goştê mirovê
Tarik sela î bênimêj e.
Tirba min li nav tirba ye
Dilopek tê ji jor de,
Di nav çava ye
Ev ezabekî pir giran e
Ezabê dê û bava ye.

## SIH HEZAR

### TON WAPOR HATINE XERIQANDIN

MOSKÛ— Di nav 8 rojên dawîn de qiwetên sovyetî di Behra Barentzê, û yên Baltiq û Reş de, 30.000 ton mezin waporên dijmina bin av kirine. Bi derbên Ûrisa du waporên banzînkeş 15.000 ton mezin, 21 barkêşên şer û robaran û 8 gemiyên din bin av bûne.

LONDRE— Hawîrên Londrê ên agah niho bawer dikin ko Wezîrê emerîkanî ê dervekariyê Mister Kordel Hal bi xwe, wê here Moskovayê, ji bona civanê sêserî, civanê wezîrên brîtanî, rûsî û emerîkanî ên dervekariyê.

WEŞINGTON— Ji Weşingtonê didin zanîn ko êrîşa erdê Ewrûpayê ê roavayî îsal wê çêbibe.

## ROME MIRIYE

### PERÎŞANIYA XELKÊ

STOKHOLM— Li ser rewîşa bajarê Romayê nûçegihayê rojnama svêçî Gotborg Tidingen kitkitên jêrîn elam dide: Êvarê piştî saet nehan kes nikare ji mala xwe derkeve û kûçe û kolanan de bigere. Trên, tramway û otomobîl mîna adetî dimeşin, lê peyayên ko di nav bira 18 û 35 salî de ne qey winda bûne. Ew hatine girtin û şiyandin Italya Bakurî, ji bona xebata zor, ew rê û penahan çêdikin

Hin rojnameyên fasîst yên ko li 25 ê tîrmehê hatî bûn sekinandin ji nû ve derdikevin, nemaze «Regima Fesîsta».

Polîsên talyanî ber nadin ko xelk bikevin Vatîkanê. Du nobetdarên elemanî sileh di dest de, meydana St. Pierî diparêzin.

LONDRE— Du waporên Svêçî a xaça sor 6.000 ton zad û zexîre anîne Selanikê.

Svêçîstan pê arîkariya xelkê Yewnanîstanê dike. Du waporên din jî tên Pîreyê.

# DEMA NIHA

CEZAYIR — Yekîneyên Hevalbendan ên mezin li ava Volturnoyê derbaz bûne û li wê aliyê avê serpirine qaim danîne· Qiwetên Ordiya pêncemîn ên zirhkirî pêş ve dikevin, her çend jî berberiya elemana xurt e. Şerê Romayê destpê kiriye.

MOSKÛ— Bi awakî resmî didin zanîn ko leşkerên sovyetî di kûçe û kolanên b a j a r a n de şerê elemana kirine, ew şkênandine û şarisianên Gomel, Melîtopol û Zaporojîyê standine.

MELBURN — Hevalbendan dirêjî Rabûlê kirine û xesarine dijwar gihandine Japona. Zehf gemiyên Japonî hatine xeriqandin. Çekê Hevalbenda ê hewayî 177 balafirên Japonî anîne xwar.

CEZAYIR— Mareşal Badogliyo, serekê hikûmeta talyanî dubi bi bangina ko di radyoyê de hatiye belav kirin da zanîn ko Italyayê dest bi şerê elemana kiriye. Eve bangîn:

Italyaninol Ez ji we re didim zanîn ko min îro 13-ê çiriya pêşîn, bi emrê Kralê Italyayê şer îlanî elemana kiriye. Beriya ko eskerê elemanî ê dawîn ji Italyayê derkeve, silh û aşitî na keve destê me. Divê emê di tenişta hevalên xwe Emerîka, Brîtanya Mezin, Rûsye û miletên Hevalbend ên din de pêş ve herin.

LONDRE— Hikûmetên Brîtanya Mezin, Emerîka û Sovyetistanê bi gotareke yekdemîn elam dane ko wan qerara hikûmeta talyanî cem xwe nivîsandine, qerara ko bi gotinên Mareşal Badogliyo hatiye wesif kirin. Ew tevkariya qiwetên talyanî ên çek-kirî dipejirînin, û kirina şerê elemana de Italyayê mîna nîvekarê-şerker nas dikin. Lêbelê bi vê tevkariyê şertên çekdanîna talyanî bi tu awayî ji qiwet nakevin. Ev şertên he bitenê bi lihew hatina Hevalbendan û li gora arîkariya ko talyana kirine, dikarin bêne edilandin.

# TEMO & ÇELENG

— 2 —

Bi vî awayî demeke mezin borî, Rnstemxan û jina xwe li halê keça xwe ecêb mayî man, keç jî roj bi roj, saet bi saet, jar dibû, û goştê wê her wekî berfa li ber tavê dihelya. Her gav ewê ji bihn tengiyê gazind dikir û digote dê û bavê xwe; ji gund pê ve li tu cihî ez dil fireh nabim... de Bavo, de Dayê, rabin em derkevin gund. Dê û bavê wê, ber delaliya wan jê ra, bi a wê dikirin, çima ko ji Çelengê pêva tu zarokên wan tu ne bûn. Radibîne bi tevayî diçûn gund, du, sê şevan dişkênandin. Çelengê bi dîzî Temo didît û her duwa, bi dîtina çavan pêta di dilê xwe da vedimirandin,

Rojekê Rustemxan ji ji,na xwe re got: hurmet! hela binêre bê çi halê Çelengê ye? û daxwaza wê çiye? Dêya wê buhurt cem wê û bi nermî jê pirs kir û gotê: Çeleng! Keça min a delal, tu xêr e, çi dixwazî? qîzê lê venegerand, dîsan û dîsan jê pirskir, Çeleng, serê xwe nizim kir û kelo-grî bû û lê vegerand: Dayê, Dayê, min Temo divêt, Temoyê gundî. Dê ji bavê re dilxwaza wê qisekir. Bav enirî, hêç bû, û bi lez bi ser qîzê da hat û qîrî: keça xirab, tu çawan dildikî gundiyekî belengaz bikî? Keçikê ruyê xwe ji bavê zîvirand û bê hemdê wê hêstirên germ di çavan de çûn û hatin û ji nav bijankên dirêj gundirîn..,

Bawê wê, careke din, bi dengekî zexm û bê rehm li wê qîruja: vegerîne qîza xirab.Çeleng berî xwe da bavê xwe û li çavên wî nihirt û bi dengekî dil şikestî jê hêvî kir û gotê: Bavo, ez heyran, belê Temo gundiyekî belengaz e, lê belê, dilpaqij û çavtêr e; yan Temo Bavo, yan ez m ê r a n nakin. Bavê wê lê vegerand: te didim Ruhistîn û nadim Temoyê gundî, welê keç bimîne heya mirinê, û Çeleng hişt û bi derket.

Şeş heft meh borîn, rojekê êvarê, Rustemxan li gundê xwe, di nav mêvan û gundiyên xwe da rûniştî bû, ji pêşberê gund gaziyek bihîstin: nêrîn ko wayê şivanek dibêje: «çar leşkerên hikûmetê tev serekê wan ve hevalê min kuştin û keriyê me dan ber talanê, ez bi zora lingan filitîm û hatime hawarê. Temo berî hemûwan hespê xwe şidand, û dest da tifangê û hefsarê hespê xwe berda û çû.

Temo li pişta neyar ket, ge heştê wan, hê talan bi dûr ne xistibûn, peya bû, xwe avête pişt zinarekî, û deng da leşker û qîrî: gelî neyaran, berê xwe bi min din, qet mebêjin ko Temo bi bêbextî hate me; û dirêjî wan kir, tiqereqekî piçûk borî, cendekên siséyan ji wan leşkeran di nav xwînê de man û ên mayîn talan berdan û bazdan. Temo ji paş zinêr hate xwar, berê xwe da wan cendekên ko li erdê mabûn, dît ko hêj ruh di sînga serek de hildavêt, û çavên wî hê bi girtina dawîn ne hatine. girtin, Temo li ber laşê wî sekinî û gat ê: (erê ... gerek hon bizanibin ko xwîna mirovekî kurd bi pênc qurbanan tête birin).

Temo keriyê pêz da hev, û ber ve gund ajot, di rê de, dît ko waye ji nû ve siwarên gaziyê tên, jê pirs kirin; kuro Temo te çikir? Temo li wan vegerand û got: ve gerin gelê gundiyan, îş qediya. Hemû li dora wî top bûn û ew bi şabaş û şahîneteke mezin derbas kirin gund.

Rustemxan dengê qire cirê bihîst, ji xulaman salix hilanî. Dema ko seh kir ko ew xortê wê talan vegerandine bi navê Temo ye, kete bîra wî ko ew kesê ko Çelengê lê dilxweş e.

Xortan, Temo di nav xwe de yekser anîn mala Rustem. Rustemxan heya pêş derî, çû pirgîya wî, deste wî bi germî hejand, enîya wî-bi dilovanî maç kir û gote wî: her bijî mêrxas o! her bijî egîdê xortan.

Rustemxan bi destê Temo girt û borand hêla malê, bangkir keça xwe, Çeleng hat, bavê wî destê wê û Temo gihan de hev û bi çavekî nêrîn-şa li wan nêrî û got: hûn ji hev pîroz bin, u bi hev ra kal û pîr bibin.

Piştî heftekê, daweteke mezin li gund çêdibû, bûk û zavak, bi benê miqedes dibûn yek, bi dilekî geş, gava peşîn avêtin, û bi riya jiyinê ketin!..,

SUBHIYÊ DIYARBEKRÎ

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## Xebat - Hêjabûn - Serfirazî



Pisporên Emerîkanî Qala Selihandin û Edilandina Balafiran Dikin. Mirovên Hêja Bi Tiştê Ko Kirine Qet Qail Na Bin, Dixwazin Her Bêtir û Çêtir Çêkin.



Qeflewaporeke Mezin Gihaye Bendereke Brîtanî. Hevalbendan Zora Noqavên Elemanî Birine û Behrên Cihanê Ji Nû Ve Bûne Serbest.




Qiwetên Çînî Ên Motorkirî Berê Xwe Dane Dijmina. Welatperwerên Çînî Bi Mêraniyeke Ecêb Şerê Japona Dikin û Ji Bona Azahî û Serbestiya Welatê Xwe Dixebitin.

## LI BER DERGÛŞA

### L O R Î

Lorî de lorî
Kara min de lorî
Berxa min de lorî...
Hekîmo, hekîmê Helebê
Tu bîne derman û elbik û melhemê
Birîna xortê mala bavê min
pir xedar e;
Şaxê xwe berdane ser kezebê.
Lo. lo... hekîmo.,. hekîmê zozana
Tu bîne elbik û dermana
Birîna xortê mala bavê min
Pir î xerab e...,
Ez bala xwe didimê
Zenga mirinê avêtiye dirana
De lorî, kara min de lorî
Dergûşa kara min ji darê lûle yê
Ezê tê wer kim kurk û ebe yê
Ezê berxa xwe, li nav pişta xwe
bişidînim;
Ezê bibim mala bavê xwe yê...
De lorî, karika min de lorî!!...
Dergûşa karika min, ji darê gwîzê
Ezê pê werkim bihna misk û
mawerdê
De lorî karika min de lorî...

XELÎLÊ METÎNÎ

1ère ANNÉE — LUNDI 18 OCTOBRE 1943 — NUMERO 24

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

C'est sur le cours moyen du Dnieprqu'est en train de se décider la plus dure partie de cette campagne. Les Russes sont parvenus à transférer plus d'une dizaine de divisions sur la rive occidentale du fleuve, au nord et au sud de Kiev. Toutes ces troupes soviétiques ont réussi à emporter avec elles une puissante artillerie et tout leur matériel lourd. Plusieurs contre-attaques allemandes désespérées ont été repoussées avec succès et les unités de l'Armée Rouge opérant sur la rive droite du Dniepr tant au nord de Kiev, au confluent du Pripet, qu'à une soixantaine de kms au sud de la capitale de l'Ukraine sont à plus de 16 kms. à l'ouest du fleuve, de sorte que la berge où s'effectue constamment le débarquement de renforts est déjà hors de portée de l'artillerie ennemie.

La percée de la ligne du Dniepr est lourde de conséquences pour l'armée allemande. Les unités soviétiques menacent maintenant de couper du gros de leurs forces les effectifs allemands opérant encore dans la boucle du fleuve, ce qui représenterait pour la Wehrmacht un second Stalingrad.

Seule une retraite hâtive pourrait encore sauver les armées allemandes mais comment concilier cette retraite avec le maintien du prestige du Fuhrer et ses déclarations concernant la ligne de défense du Dniepr? Surtout que des questions d'ordre économique viennent encore se greffer par—dessus. Après la perte du Kouban, du Donetz et de la majeure partie de l'Ukraine il est essentiel pour les Allemands de conserver tout au moins une partie de ces riches terres à céréales.

En outre, plus les Russes avancent, plus ils se rapprochent des frontières de Roumanie, et le moment n'est plus éloigné où les champs pétrolifères de Ploesti se trouveront dans le rayon d'action des bombardiers soviétiques.

A tous ces facteurs viennent s'ajouter des raisons politiques: la situation devient de plus en plus difficile pour les Allemands en Roumanie et en Bulgarie et l'attitude de ces deux pays est profondément influencée par l'avance russe vers l'Ouest.

L'armée allemande du sud se compose de 7 divisions cuirassées et de 14 divisions d'infanterie qui pour la plupart, ne possèdent plus leurs effectifs de campagne, ayant été constamment sur la brêche depuis plusieurs mois. Ces divisions ennemies ont un besoin urgent de renfort et de matériel blindé que le Commandement allemand ne peut leur fournir qu'en les prélevant sur d'autres secteurs de l'immense front oriental, ce qui, d'ailleurs a déjà été fait à Nevel, par exemple avec pour conséquence immédiate la percée russe dans ce secteur.

Cette percée a pour effet, non seulement de rapprocher les unités soviétiques des frontières de Pologne et des Etats Baltes, mais aussi de menacer toutes les positions allemandes du front de Leningrad.

Là aussi, l'armée du général Kiehler se trouve sous la menace d'une catastrophe, en cas d'accentuation de l'avance soviétique, mais une retraite allemande sur ce front entraînerait également de graves répercssions d'ordre politique,

Toute la Russie septentrionale serait libérée. L'Armée Rouge parviendrait aux portes de la Prusse orientale. La Finlande n'aurait plus d'autres ressource que de demander la paix et l'armée du Général Dietel opérant dans les régions arctiques, serait complétement coupée de tout moyen de communication avec le Reich.

Une tentative de résistance de la Wehrmacht sur la ligne du Dniepr équivaut à une catastrophe militaire; une retraite vers l'ouest représente une catastrophe politique et économique pour le Reich.

Les dernières nouvelles du front italien indiquent que les armées alliées sont à la veille de déclencher une poussée générale en direction de Rome, Le Commandement Allié s'attend à livrer encore plusieurs combats avant d'atteindre la. capitale, mais toutes les dispositions ont été prises pour assurer le succès de ces opérations.

Kesselring met en ligne tous ses chars, ses canons et ses avions disponibles pour contenir la poussée alliée, mais on apprend que la 8éme Armée a reçu des renforts considérables, débarqués sous la protection de la Marine. Les Alliées semblent avoir l'intention de poursuivre leur avance sur la ligne allant de Benevento à la côte.

Les Allemands prétendent que es Alliés disposent déjà de 15 divisions dans le sud de l'Italie.

En Yougoslavie, les unités de partisans poursuivent avec succès leurs opérations dans les régions de Zara, Sussaq, Karlovak, Ogulin et de Varazdin. L'importante gare d'embranchement de Vargovac, située sur la voie ferrée Budapest—Zagreb, non loin de la frontière hongroise. a été détruite par un détachement de patriotes. La majeure Partie de la ligne entre Zagreb et Korpivnica est actuellement aux mains des partisans.

En Istrie. la bataille se livre principalement dans les environs même de Trieste. Les Allemands se sont retirés vers le port.

Th. H.

## LA LITTERATURE COMME BASE DE LA VIE NATIONALE

### UN ESSAI SUR LA LITTERATURE TCHÉCOSLOVAQUE

Par **V. ALES**

*Frana Sramek lire : Franya Chramek éternellement jeune même a l'âge très mûr, forme la transition moyenne à la période la plus moderne. C'est là l'ère des auteurs qui ont activement participé à la lutte de la libération nationale du peuple tchécoslovaque et à la construction de son Etat renouvelé. Ils sont responsables de l'épanouissement splendide de la littérature tchécoslovaque ou cours de la période de la libre République Tchécoslovaque depuis 1918.*

*La prose et le drame de cette période sont représentés avant tout par Karel Capek (lire; Tcapêk; né en1890, mort de chagrin après le désastre munichois de sa nation en 1938), dont l'œuvre, poétique et philosophique en même temps, a gagné une renommée mondiale. Parmi les autres prosateurs de cette période, signalons au moins les mieux connus: Ivan Olbracht (lire: Olbrakht ; né en 1881, mort dans un campde concentration allemand), maître de la description de la Russie Subcarpathique, la partie la plus orientale-belle et romantique-de la Tchécosovaquie; Vladislav Vanoura (lire; Vladyislav Vantchoura;né en 1891,exécuté par les Allemands), le maître du roman; et l'un des plus jeunes. Egon Hostovsky (vivant actuellement en exil). Avant de finir ce chapitre sur la prose des dernières années, il serait injuste d'oublier la prose satirique qui a donné à la littérature tchèque son livre le plus populaire à l'étranger; «Le bon soldat Svejk» (lire: Chveyk), par Jaraslav Hasek (lire; Yoroslav Hachék; 1884—1923) une satire rigoureuse et démocratique du militarisme austro-allemand de la premièr, guerre mondiale,*

*Le développement de la poésie n'était pas moins splendide. Des poètes de la plus vieille génération citons au moins Otaka Brezina (lire; Brjézina; 1868—1929), un poéte de mysticisme religieux, de renommée mondiale. Le lyrique de la délicatesse d'un Villon et d'un Verlaine; Karel Toman (né en 1877) appartient à peu à la génération la plus jeune — moins par son âge, que par son attitude littéraire. Le même caractère distingue le poète socialiste et révolutionnaire St.K, Neuman (lire: Noîmann; né en 1875).*

*La poésie publiée immédiatement après la première guerre mondiale, exprime les sentiments éternels de la nation; le désir de la fraternité et de l'égalité des hommes; Le lyrique Josef (lire Yosèf ) Hora (né 1891) est souvent considéré comme le plus grand des poètes tchèques vivants, tandis que Jiri (lire : Yirji ) Wolker (1900—1924), prématurément mort, devint le maître de la ballade humanitaire. Les tendances ultra—modernes de la poésie sont représentées surtout par F.Halas et V. Nevzal (né en 1900)*

*Il faut encore traiter la littérature slovaque. Une production littéraire slovaque éparée n'a commencê que vers la moitié sdu XIXsiècle, quand le philologue et patriote Ludevit Stur (lire: Loudévit Chtour 1815—1856) éleva le dialecte slovaque en langue littéraire, afin de pouvoir mieux sauver le peuple d'une magyarisation complète A ce temps-là, le peuple tchécoslovaque vivait toujours sous le joug des Habsbourgs. Mais tandis que la branche tchèque du peuple souffrait sous l'oppression allemande, dans la partie autrichienne de la Monarchie habsbourgeoise. la branche slovaque était exposée à une tyrannie encore beaucoup plus cruelle des Hongrois, dans la partie hongroise de l'empire des Habsbourgs. C'étaient ces raisons politiques qui ont causé la séparation de la langue littéraire et de la littérature slovaque et qui étaient également responsables du fait que le développement de cette littérature nouvelle n'était aussi rapide que celui de la littérature tchèqen.*

*Le premier grand poéte écrivant en slovaque, était Hvie—doslav (lire. Hvièzdoslav, 1849—1921); le premier grand prosateur était Martin Kukucin (lire; Martyine Koukoutchune; 1860—1928), le Gogol slovaque- Un autre poète et prosateur excellent était Martin Razus (lire: Martyine Razouss 1888—1932) qui était. en même temps, l'un des chefs politiques de son peuple.*

*Or, ce n'était qu'au début de la vie nationale libre dans la République Tchécoslovaque, qu'on pouvait remarquer un véritable épanouissement de la littérature slovaque. Parmi les auteurs de cette période signalons au moins Jan Smrek (lire; Yan Smrèk;né en1898),le premier romancier slovaque à être traduit en langues étrangères,*

*L'espace limité d'un article journalistique ne nous permet pas de décrire le développement de la littérature tchécoslavaque dans ses traits les plus caractéristiques et de mentionner que des auteurs les plus importants, Nous aurons d'ailleurs l'occasion de publier quelques belles pièces de la littérature moderne tchécoslovaque en traduction. Or, même ce bref essai doit donner au lecteur au moins une impression fugitive de l'effort littéraire splendide d'une nation, petite numériquement, mais importante quant à son moral et à son zèle culturel, d'une nation qui a construit toute sa vie sociale et politique sur la base spirituelle de l'humanisme et de la démocratie véritables.*

## POEME KURDE

### FUREUR

Le soleil est un point mort
Dans l'espace vide
Quand la trombe arrache
Les branches
Des arbres,
Comme des femmes malheureuses
Leurs cheveux.

Des abîmes s'ouvrent
Entre le ciel et la terre,
Comme un cauchemar
Le vent est noir,
Les nuages ont des lèvres rouges
Qui brulent sous leurs baisers
Les entrailles de la terre.

Un cri terrible parcourt
Les cimes des montagnes,
Des avalanches tombent
Comme une clameur qui arrive
Du fond d'une catacombe.

Comme un mot
Qui détruit le rêve
Ou l'amour d'une vie.
Cette fureur sauvage est douce
Comme le sang qui coule
D'une blessure
Et chauffe des muscles gelés
Comme des héros qui
Sous leur lance de courage
Dominent des dragons en rages
Les rochers regardent
Ce tumulte farouche
Sans dire un mot,
Sans ouvrir la bouche.

Dans l'horizon lointain
Soudain
Le soleil ouvre son oeuil
Des flèches dorées couvrent la terre
Des fleuves sanglants
Brillent comme des flammes;

Mais la brise
Est douce
Comme la caresse d'une femme,

DR. BEDIR KHAN

*Provisoirement,* LE JOUR NOUVEAU *parait chaque Lundi.*

## DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

*Nivîsevan* *Grigori Petrof*

15

*Wergerandok:* *Qedrî Can*

### FOTBAL

Ji piştî rûnişta Napolyon li ser textê Frensa ve, li Ewrîpayê ceng ne sekinî bû. Napolyon hema bi Ewrûpayê giş re ceng dikir; berî gişan dixwest Îngilîzan bişikîne. Îngilîzan jî dixwestin wî ji textê wî daxînin. Napolyon Ûris jî bi cengê dida tirsandin.

Ûris, ji ber vê tirsê, di sala 1.808 de, dev ji şerê xwe û Îsweçê berda... ew şerê mezin û bi nav û deng, di nav Frensiz û Ûris de çêbû. Napolyon quweta bîst miletî civand û ajot ser Ûris; heta Mosquwayê çû.. Le li vir şikest û di sînga Ûris de serê wî peçiqî... bê tab û tewan vegeriya Fransayê. Ji bo vegerandina nav û dengê berî, xebitî... lê vê car Îngilîz, hemî Ewrûpa ji xwe re kirin hevalbend û ajotin ser Napolyon, Napolyon dîl ket... û nefiyê (Saint Hélène) ê bû.

Ewrûpayên ku ji şerê Napolyon bêtab û bêzar mabûn, ji vê serencama Napolyon gelek dilxweş bûbûn û ji xurtbûn û serdestiya îngilîzan pirestesşkar mabûn. Wan jî dixwestin Îngilîzan texlît bikin. Êdî her karê Îngilîzan bûbû adet û moda.

Zaroyên biçûk, carna adetên ne qenc, ji mezinan digirin; mîna vexwarina cixarê û araqê û bi dengê bilind peyivîn...

Miletê ku bi îlm û îrfan kêm mabûn, ji Îngilîzan hinek adeten kirêt girtin.

Merivên hal û wextê wan baş, zengîn, mîna Îngilîzan, ji bona cirîda hespan pere ên pir xere kirin... mîna Îngilîzan soda û wîskî vexwarin .. mîna wan serê xwe kurkirin û şehkirin.

Xortan, ji Îngilîzan adeta fotbolê girtin.. Ew xortên ku hêj xwendina xwe ne qedandi bûn, ji lîska fotbolê re pirestesşî kirin... û fotbol jî kirin mîna îlm û sen' etkî... Ew nivîsevanên ku serê wan vala, ku tenê dikarin xelkê koçeyan bînin heyecanê, di rojnameyên xwe de, ji bo fotbolê bendek vekirin û têde behsa rindbûna çîpên stûr, mîna çîpên gamêşan kirin.

Di zemanê (Senelman) de, li Finlanda jî ev hewes çêbûbû. Hingî, di xortên Fîn de fikrên durust pêda ne dibûn, û hêj bi fikrên durust re bendewar ne dibûn. Piştî ku Finlanda, xwe da ser Rûsyayê, di nav xortên Fîn de, hisên heyf—stendinê ji Îsweçan, kêm bûbû. Xortê Finlanda ên serî vala û tiral xwe da bûn fotbolê, mîna nexweşiyeke zirav, di nav xortên b a j a r a n de, digeriya... heta xwe avêtibû nav gundên mezin jî... Civat û bange (nadî) yên fotbolê, mîna pizikên canekî nexweş... mîna pêşiyê çiravan pir bûbûn, çîpên—mîna çipên gamêşan —stûr şayanê sitayişan bûn.

Senelman û hevalên wî ne dixwestin li şûna serê mezin çîpên stûr cî bigirin... wan ne dixwestin ku quweta serî bikeve lingan û serî vala bimîne. Her çi ku pêşveçûn û bilindbûna Finlandayê dixwestin digotin:

Ji çîp û zendên mîna qayişê sert, çi d e r d i k e v e? Ji bona welat çi xebatê karin bikin?

## DÛRIK

DÛRIKA DANKUTAN

Hey yal- la, ya—la
Yek wê hayê
Li nav rezayê
Kil û mirêk
Li ser çogayê
Biskê sor beradayê
Çavê reş in kil didayê
Kil û mirêk l'ser qabayê.

Ez diçûmê
Ew rewiyayê
Ez gihamê
Mirêk bi carî
Li erdê dayê.

Cara çara
Li sundayê
Û li mandelayê
Û min ne dîyê
Û min ne bînayê
Ha û elmê min
Ne gihayê.

Ev hêlînê qaz û beta
Hêlîn çêkir çol û weta
Û l' ser haleta
Vê payîzê xew xweş bûye
Li paşila van hurmeta
Ev hêlînê van ttiya
Hêlîn çêkir çol û çiya
û l' ser deviya.

Gelî xorta vê payîzê
Berî sibê
Xew xweş bûye li paşilê,
Van esmera, van zeriya.

Lê, lê Eyşê, Eyşa xanê
T' bilxur bînê ji hebanê
Kevçiya bîne, j' kefçîdanê
Tu rûn lêke ji xîzanê.

Heçî xortên dankutanê
Bila bixwin, nûşecanê.

Li pîreka û l'jinbiya
û li di hinbera
Bi quzulkurt û zexferanê
Çi werîsê girê girê
mi avêtê qulpa pirê
Ez xulama qantircîkê
du qantirê.

Siwarê kerê
Li ser bêndere,
Çav li derê
Wek ê şerê.

Ehmed kurd e
Çi qaf gird e
Mala Ehmed
Perê gund e
Jinka Ehmed
Çiqas rind e.

Ziqaqa reza bi kelbeş e
Ji îro pê ve gelî xorta
Çilovaniya, êzingvaniya
Weşê weş e
Civana min û xelka delal
tata reş e.

Way ohyayê, çi dilxweş e
Hêy yal—lah lêxin şer e
Tu ne lal, tu ne kher
Li ber mikutê xwe binêr e.

Çi ewrî di ser me re
Sozê mi bi qerara te re
Lê keçikê çardesalî
Hewşa bavî, xwe dimalî
Keçik çûye mal ma xalî

Ez çû m Kercewzê
Sê kanî ne
Yeke tehl e, yeke şor e
Û yek şîrîn e.

Xwezî bi dilê wî lawikî
Navê dosta wî Emînê
Nav şerîn ê xelkê tehl e
Û bi min şîrîn e.

## PÊJINÊN DINYAYÊ

### CENG & BIHINGEH



General De Gol, Destê Maqûlên Dirziyan Digiwêşe.



Vedeteke Brîtanî a Torpîlavêj. Ev Gemiyên He Gelek Lez in û Bi torpîlan Zora Xwe Didin Waporên Neyaran.



Topçiyekî Brîtanî Gulleyê Topên Xwe Bi Tîpê «V» Serfirazî Xemilandine.



Karxaneke Ewistralî Yên Top û Çekên Giran.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

Sal 1 — Hejmar 25

Duşemb 25 Çiriya Pêşîn 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

XWEDÎ Û GERÎNENDE : MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

CENG & SIYASET

## DEWRAN

CIVANÊ SÊSERÎ

### Rojnama Rûsî Izvestia

Li ser civanê ko li Moskovayê hatiye danîn dinivîse: Di welatên bêteref de qal a giraniya xebatên civanê sêserî yê ko li Moskovayê çêdibe tête kirin. Nimînendeyê Brîtanya Mezin li vî civanî, wezîrê dervekariyê Mr. Îdin e, yê Emerîkayê Mr. Kordel Hal û bi navê Sovyetistanê, komîserê sovyetî ê dervekariyê Mr. M o l o t o v ketiye vî civanî. Li gora hin rojnameyan civanê sêserî debara xwe bike da ko piştî şerî, dan û standina pay rojmendî û diplomasî bi hin dewletên ko dane pey elemana, ne maze bi Mecaristan û Romanyayê hêj tebatir bibe.

### Lêbelê, Pirsa Hejatir

Ya ko Hevalbendan divê safî bikin lezandina dawiya şerî ye; qedandina vî şerî roj berê rojekê. Çiqas şer zû biqede, hinde safikirina pirsên piştî şerî siviktir bibin.

### Pisra Kozîbirî

Pirsa zû xelaskirina şerî ye. Hitler dest bi şerê brûskîn kiri bû; lê Ordiya Sor plan û texmînên Hitler tevlî hev kirine.

Vî tiştî wext daye Hevalbendan û wan xwe pêk anî, debar û haziriyên xwe ên eskerî kirin. Niho eleman ketine bêgaviyê, dest ji standina ax û welatan berdane û dikin xwe biparêzin, pêşiya êrîşên me de, dikin bikarin bisekinin. Lê domkirina vî şerî li Hevalbendan biha rûdine.

Ji aliyê din, bi domkirina şerî, bi milyonan însan perîşan û şerpeze dibin, û ev berpirsiyariyeke gelek mezin e.

### Lezandina Dawiyê

Şerî bi pirsa vekirina eniyeke diwemîn li Ewripayê teng girêdayî ye. Hitler û terefdarên di wî ji qerarên civanê Moskovayê tirsiyan in, û ev qerarên he, dikarin tiştekî welê bînin serê wan yê ko hîç ne dihat bîra hitleriyan. Wan dîtiye ko di pirsa Badogliyoyê de Hevalbendan bi gotarên yekdemîn, yekîtiya qerar û gotina xwe şanî cihanê dane. Eleman dikin Hevalbendan ji hev veqetînin; heye ko ew li hin tiştan biya hev û du nakin, lê li ser pirsekê bê şik û guman gotin û qerara xwe kirine yek; ewê her fidakariyê bikin da ko ev şer dem berî demekê biqede.

### Şerê Erdê Italyayê

Baran sekiniye û Ordiya emerîkanî pênc û a brîtanî heşt dest bi êrîşa xwe a mezin kirine. Di nav şetên Volturno û Gorigliano yê de şerekî zor çêdibe. Ordiya elemanî deh ne hatiye şkênandin, ev Ordiya he, di pêşiya zora qiwetên emerîkanî de, bi rêz û tertîb xwe bi şûnda

# CIVANÊ MOSKOVAYÊ

## CIVANÊ MOSKOVAYÊ DESTPÊ KIRIYE

MOSKÛ— Radyoa Moskovayê elam dide: M.M. Îdin û Kordel Hal hatine balafirgeha Moskovayê. M. Molotov û mirovdewletên sovyetî ên din çûne pêrgîna wan. Sefîrê Brîtanya Mezin û karkerê emerîkanî jî li wê bûn. Balafirgeh bi alên ingilîz û emerîkanî hati bû xemilandin.

MOSKÛ — Civanê wezîrên dervekariyê destpê kiriye.

STOKHOLM— Rojnameyên elemanî bawer dikin ko Hevalbendan direjî axa Yewnanistanê bikin.

# ENIYA TALYANI

CEZAYIR— Pêşveçûna Ordiyên pênc û heşt di axa Italyayê de dom dike. Wan ji nû ve çar şaristanên talyanî vegirtine.

LONDRE— Wezîrê brîtanî ê şerî î kevin û lêbatê Civatmiletê Brîtanî Mr. Hora Belîşa peyiva xwe a Londrê de gotiye: Vî şerî pêş me kiriye ko heyîn û tekuzî û timamiyeta Erdê Frensê ji bona Emerîka û Brîtanya Mezin tiştekî girane û jiyînpêgirêdayî ye. Frense û Kişwerê di wê, demên çak û neçak de, tim û her birek ji yên Etlantîkê ye. Bê tevkariya Frensê li cihanê tu pronivîsa silh û aştiyê nikare bête danîn.

# TALYAN & HEVALBENDAN

## Rewişa Italyayê a îro û ya Piştî şerî

Nivîsevanê «Brîtanovayê» ê diplomasî dinivîse: Îro zehf bergehên rewişa Italyayê hatine ronak kirin. Italyanên ko şerê elemana bikin, di bin emrê serbend û zabitên hevalbendan de bikevin qada şerî.

Di navbira talyan û Hevalbendan de kêm nûçeyên eskerî dêbêne gohartin; Hevalbend her nûçeyên xwe ên eskerî pêş talyana nakin. Her çend jî Hikûmeta talyanî bi hemda xwe şer îlanî elemana kiriye, her wekî di navbira talyan û Hevalbendan de tu ehidname û lihevhatin çênebûye, mîna berî Italya dewleteke neyar e. Bêşik di civanê Silhê de, nimînendeyên wê ni karin teniştа nimînendeyên Hevalbendên mizefer de rûnin. Rewişa hêsirên talyanî bi tu awayî ne guheriye û ew mîna berê hêsir in. Ew gava şerê Hevalbendan dikirin hatine girtin. Di Londrê de hêvî heye ko êdî xelkê Italyayê hêj bêtir pêşiya zora elemana de serbazî û serhişkiyê bikin, bi piranî, heke an ne bi tevayî xwe bigihînin Hevalbendan, û kar û barên elemana xira bikin û ew êdî naçin destgeh û febrîqeyên elemanî û têde na xebitin.

# DEMA AZAHIYA KIEVÊ

## GAV BI GAV NIZINGTIR DIBE

MOSKÛ— Di kûçe û kolanên Melitopolê de şerine xwîndar dom dikin. Xesarên elemana dijwar in. Peravên Dnieprê ên rastê di kevin destê Ordiya Sor. Dema azahî û serbestiya Kievê hin bihin nîzingtir dibe. Di nav heftekê de qiwetên sovyetî hezar tang û balafirên elemanî xira kirine

# M. TSUDEROS DIBÊJE

## EM NA XWAZIN DOSTÊN XWE ACIZ BIKIN

QAHIRE— Wezîrê Yewnanî ê yekemîn M. Tsuderos qala qebûlkirina talyana mîna nîvekarê-şerevanî kiriye û gotiye: Yewnanistan ketiye şerî ji ber ko Italyayê bi bêbextî destê xwe direjî heyîn û azahya wê kiri bû. Qerara me ev e: heta xelas û serbestkirina Welêt şer kirin, lêbelê em naxwazie Hevalbendên xwe aciz bikin.

Rast an nerast heke Hevalbendên me li siyaseta qebûl kirina talyana mîna nîvekarê şerker, bi çavekî xweş dinêrin, em di heqê vê pirsê de dev ji gilî û gûyan berdidin; ji ber ko îro eskerên wan di erdê Italyayê de şerê elemana dikin.

dikişîne. Erdê ko niho tê de şer çêdibe deşt e, û bikêrî tevdana tang û yekîneyên zirh û motorkirî tê. Ji xwe ji aliyê behrê ve jî stolên Hevalbendan esker tînin peravên meydana şerî.

Gelo li ku derê eleman wê bikarin bisekinin û pê bidin erdê?! Ava Garigliano yê ji hêla berevaniyê ve, ne hêja ye, ji xwe ev şet ber bi bakurî ve diçitile. Qada navîn bi qiyasdarî ne têr teşxele ye, her çend jî elemana elam dane ko wan terka Kampo-Basoyê dane, û nûçeya ko ji Cezayirê tê dide zanîn ko leşkerên Hevalbendan Vinçiatura vegirtiye.

### Di Eniya Rûsî de

Serfiraziyên Ordiya Sor dom dikin, standina Zaporojiyê tiştekî gelek girane ye. Duhî lekên şerevaniyên rûsî ji nû ve 12 kilomêtiran pêş ve çûne; û zehf bajar û avahîgeh standine. Peşveketina yekîneyên rûsî ên zirhkirî dom dike.

### Di Nav Bira

Enîşka Dniepr û Behra Azovê de, li Kiyev û erdê Rûsya Gewir de, eleman perîşan in, halê wan ne tu hal e. Bê zêde kirin dikare bête gotin ko şerê elemana êdî şerekî bê hêvî û niyaz e. Meydana şerê Kievê ji xwînê sor bûye.

Eleman êdî nikarin li Kievê bimînin; tiştê ko ji wan tê, roja ketina Kievê hinik bi şûnda hiştin e, lê bihayê ko ji bona vê qesdê datînin, gelek giran e.

### Qewil û Ayîn

#### QEWIL

Roja vê qal û belayê
Cehenem e digire sewdayê
Bav gazî dike law nayê;
Law gazî dike bav nayê.
Roja heşrê, rojek teng e
Erd û ezman li me dide denge
Me gunehkara ne dima renge
Hêvî Mihemed Mistefa ye.
Ez l' bextê te me l' qiyametê
Tu ê l' me bikî vê şefa'etê
Ji fedla Xwedê re, tu ê me
bavê cenetê
Imdad Mihemed Mistefa...

#### QEWIL

Wey me çi kir û me çi bi derda
Zêrê zer bû, me bi sifrê wer da
Me dinya girt û axiret bi der da
Xweli l'serê me û kewna dinyayê.
Tirba min î nav tirban e
Dilopek hatî li ser çava ne
Hemû j' gunehê dê û bavan e.
Tirba min î, li ber deviyê
Dilopek hatî li ser eniyê
Hemî j' gunehê cîraniyê
Xueli l'serê me û kewna dinyayê.
Tirba min î, teng î direj e
Têde heye markî kher û gêj e.
Dîxû goştê îsanê bi nimêj e.
Tirba min î l'ber dîwara
Mi dî mişka ban kir mara
Heydê emê herin
Goştê îsanê rojî xwara.
Xweli l'serê me û
kewna dinyayê.
Kanî Adem, ka Hewayê
Kanî Mihemed bavê Fatmayê
Daim selawata bidin
Navê Mihemed Mistefayê.

# CARINA

## EM JI BIRA DIKIN

Ko rûyê erdê Frensê 551.000 kilomêtir çarguşe ye û têde 42 milyon xelk rûdinin.

Rûyê erdê kişewrê frensizî 11 milyon û nîv kilomêtir çargûşe ye, rûniştimanên kişwerî 52 milyon in; ango xelkên welatê mader û yên kişwerê bi hev re, nîzîkahî ve dikin 100 milyon. Bajarên Frensê ên mezin ev in; Paris, Marsilya, Liyon, Bordo, Lîl. Paris payetexte Frensê ye, şaristanê dinyayê ê çeleng û spehîtir Paris e, tê de 3 milyon xelk rûdinin.

Ji xelkên Frensê sedî de 42 bi cotkarî, 30 bi derêxistina m'adenan ji erdê û bi karên destgeh, febrîqe û karxaneyan, 16 bi dan û standin û karên waporên av û reşayiyê, 6 bi karên dewlet û hikûmetê û gerandina dîwan û dairan û 7 bi şuxlên din mijûl dibin. Çiya û zozanên Frensê zehf in, çiyayên wê ên bilindtir Alp û Pîrene, Seven û Anjû ne. Şetên Frensê ên fireh û direjtir ev in. Ron, Sên, Garon. Ron, — 780 — Sên, — 700 —Garon — 600 kilomêtir direj in. Girava Frensê a mezintir Kors e.

Ji axa Frensê sedî de 57 par bîsatn û zevî, 4 rez, 16 rêl û daristan, 11 çêre, û ên meyîn beyar in.

# DEMA NIHA

MOSKÛ — Leşkerên sovyetî gihane dera ko ji Kievê bitenê şeş mîl dûr e. Ordiya Sor Melitopol standiye.

CEZAYIR — Qiwetên Hevalbendan Peto-Çiato, Dragonî û Reka Romano standine, li hin deran tevdana kewte û sedmêran û li hin derên din pêşveçûna leşkerên Hevalbendan dom dike. Refên warên Efrîqa Bakurî di erdê Italyayê de rê, pir, gehînekên rêhesinan û qefle û komeskerên dijmina bombardiman kirine.

CEZAYIR — Di balafirgehên Italyayê de 1.245 balafir ketine destê Hevalbendan, 679 mekîneyên elemanî û 566 yên talyanî.

WEŞINGTON — Wezareta Emerîkanî a behrî dide zanîn: Noqavên emerîkanî heta îro 319 waporên japonî bin av kirine û xesar gihandine 141 hebên din; hêvî heye ko ji wan gemiyan jî 36 yekîne xeriqîne.

NÛ-DELHÎ — Cihgirtiyê Kralê Brîtanya Mezin li Hindistanê Lord Wêvel, xanima wî Ledî Wêvel û keça wan Banû Felisite hatine payetextê Hindistanê.

WEŞINGTON — Ji destpêka şerî û heta niha qiwetên emerîkanî 6.279 balafirên japonî xira kirine; ji emerîkaniyan 1.867 heb çûne.

LONDRE — Elemana di Polonyayê de ji nu ve 5.000 jin û mêrên welatperwer girtine û avêtine zêndanan.

NAPOLÎ - Nûçegihayê yekîtiya rojnameyên Hevalbendan Noel Monk ji eniya talyanî dinivîse: Li ser vexwendina General Klark, li 15-ê mehê mi çavê xwe li kozik û çeperên eniya Volturnoyê gerandine. Ba û baran meşa leşkeran bi şûnda hiştî bû; lê îro dinya xweş e, û roj dibiriqe, û zabit û serbend gelek kêfxweş in, êrîşa Hevalbenda ber bi Romayê ve, wê destpê bike.

Bi General Klark re hilkişiyame serê çiyayekî biçûk; jê çar aliyên nevalan xweş dihatin dîtin: diviya bû emê xwe nizm bikin û pê canê xwe ji agirê elemana biparêzin yê ko ji pala çiyayekî dihat.

General Klark li nevalê nêrî û got : tu tiştî li dinyayê mîna qada şerekî ko têde şer hêj destpê ne kiriye, ne têr rahetî û bêdengî ye. Di vê nevalê de şerên erdê Italyayê ên zortir çêbibin..sibe...an piştî çend rojan!..General Klark gava qala dijmina dikirin ji generalên xwe re digot: lêxin; xurt lêxin.Generalan wa'd dane ko wilo bikin. Dema em vedegeriyan, çavê me bi stûnekê ketiye, ya ko şanî riya Romayê dida û li ser wê dihate xwendin: «Rome 200 kilomêtir».

General Klark lê meyizand û got; ne hevqas dûr e!

Ez êdî dikarim bibêjim ko ji bona şerê Italyayê ê mezin her tişt pêk hatiye. Leşker hêviya emrê General Klark sekinîne.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ ¡MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## Xebat - Hêjabûn - Serfirazî



GENERAL DE GOL DI FASÊ DE

## QEHREMANÊN ORDIYA SOR



General Yeremenko



General Zubkov



Jin û Keçên Sovyetîstanê Jî, Ji Bona Azahî û Serbestiya Welatê Xwe Cengê Elemana dikin.

MOSKÛ - Di Piatîyatkayê de leşkerên rûsî 15 trên çek û zad dagirtî, 30 tang—17 hebên wan ji tîpê piling—171 top, 1.300 kemyon, 600 mitralyoz û zehf çek û posatên din û depocebilxane û depoxaneyên zad û zexîran standine. Di nav deh rojên dawîn de qiwetên rûsî 1.000 tangên elemanî xira kirine.

## Strana Kurdî

### PEMEDO

Pemedo ne yê bihar e, ne yê pehîz e,
Pemedê şeng ji mala sila, ji
xalan zîz e.
Malê xwe bar kirî, deynandî
binê çiyayê Ebdilezîz e.
Xeleliyê, mîrê gêsan kir dîwan e
Di gazî ket cindiyan û yekan e
Her çî terş û talanê xeretê Pemedê
Şeng bo min bînit,
Ezê bidimê keçikekê navê wê
Qeremircan e.
Ez Qeremircan im, Qeremircan im,
xudan û xwîşkê heft bran im.
Digerim li koçik û li eywan im
Herçî ters, û xeretê Pemedê Şeng
ji min re bînit
De bila destê min bigirit
Bigerînit hemî axed Kurdistanê.
Malekê ji malan pê de
Kurkekî bîj e, heya tê de
Dibêjit: ez dê terş û talanê
Pemedê şeng dê bînim;
Sê rewê dewarê zêde.
Dilê min pehûk e, dilê min pehûk e.
Li seran têne befr e, li geliyan
têne pelepûk e;
Gavan û şivanê Pemedê Şeng
Li ber xwînan ve bûne bûk e.
Dilê min pexal e, dilê min pexal e
Dibêjit Pemedo rabe, terş û
talanê te birin, bi careke.
Ez Pemedê Şeng im, çavbelek im,
Xudanê leylika gerden
pehnordek im,
Sê roj û sê şeva bo leylikê hinîne
Ne bêjin ev yek in, em gelek in.
Dibêjit: Pemedo wene wene
Emê sêsed û pêncî mêrê
gêsiyan hene
Hemi avêtin ber bextê te û bextê
leylika te ne.
Mêra ji mêra hêvî hene
Sê mêra namûsa te ne
Mi nizanî bû, xere û talanê te ne.

## DEBARA ELEMANA

### WEXTKARKIRIN Û XWE BI ŞÛNDA KIŞANDIN E

LONDRE— Li gora nûçeyên ko gihane Sviçreyê eleman di Italyayê de niho şerên wextkarikirinê dikin, heta ko di Italya Bakurî de xeteke bervaniyê a qaim tête çêkirin. Serfermandarî û şerdariya elemanî sînor kişandine kar û wezîfeyên Romel û Kesserlingî. Wezîfa Kesserling wextkarkirin û bi şûnda hiştin û girankirina pêşveçûna Ordiyên Hevalbendan e, ber bi Italya Bakurî ve; û qels û sistkirina wan beriya ko bigehin xeta elemanî a bervaniyê der nav bira Speziya û Ravenê.

Bakurê vê xetê de girtin û berdan di destê Romel de ye. Hawîrên talyanî ên eskerî î feşîst bawer nakin ko Kesserling wê bikare qiwetine mezin bêxe qada şerê Romayê.

Li ba nêrevanên bêteraf Hevalbend beriya dawiya vê salê Rome bistînin, lêbelê şerê Italya Bakurî ji vê zivistanê wêdetir wê dom bike.

## PANZDE HEZAR BALAFIR

### ÇEKÊ BRITANÎ 15.000 BALAFIRÊN ELEMANÎ XIRA KIRINE

LONDRE— Bi awakî resmî didin zanîn ko ji despêka şerî û heta niha 10.000 balafirên elemanî di ser axa Brîtanya Mezin re û 5.000 di ser Behra Spî re hatine xira kirin.

Moskû-Sovyetistanê 65 generalên nû payekirine.

Melburn — Di axa Nû-Gineyê de leşkerên ewistralî gihane dera ko ji Madangê 65 kilomêtir dûr e.

Nû—Delhî : Refen emerîkanî bi ser axa Birmanyeyê de girtine û 75 ton bombe avêtine war û hêjagehên japona, gelek bombe xurt û rast li dertgehwaporên nêzîngî Rangûnê ketine.

1re ANNÉE — LUNDI 25 OCTOBRE 1943 — NUMERO 25

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire. EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Il y a deux ans, le 20 Octobre 1941, l'état de siège était proclamé à MOSCOU et l'inquiètude était générale. Mais STALINE sut galvaniser son peuple. Les Russes ont tenu, et deux mois plus tard, les forces soviétiques passaient à la contre-attaque et sauvaient la ville.

Aujourd'hui, 20 Octobre 1943 ce n'est plus MOSCOU qui est en danger: c'est la Wehrmacht toute entière, acculée à ses derniers retranchements.

Les Allemands espéraient que les Russes épuisés par leur avance sur un front de plusieurs centaines de kms au cours d'une offensive de trois mois s'arrêteraient sur le DNIEPR, Mais il n'en fut rien.

Non seulement l'Armée Rouge ne s'est pas arrêtée, mais elle a lancé une nouvelle offensive sans laisser le moindre répit aux Allemands. La Wehrmacht a été rejetèe au delà du DNIEPR. Le fleuve a été franchi. Les têtes de pont établies par les forces soviétiques ont été progressivement élargies en dépit des efforts désespérés des Allemands de contenir l'avance russe.

KIEV a été enveloppée par le nord, ZAPOROJIE a été occupée, les unités de l'Armée Rouge sont entrées à MELITOPOL. Les forces soviétiques ont passé. à l'offensive à partir de la tête de pont établie au sud-est de KREMEN CHOUG, et avancé de plus de 90 kms. derrière DNIEPROPETROVSK.

L'importante jonction ferroviaire de PIATIKHATKA a été occupée, coupant toute voie de retraite à des effectifs allemands estimés à 250.000 hommes.

Les Allemands, pris de vitesse, sont incapables de se dégager. Ils sont, aujourd'hui, acculés à des batailles rangées car les Russes veulent les forcer au combat.

Et à Berlin règne l'ambiance des jours sombres de STALINGRAD. Il s'agit, là aussi; de vastes mouvements d'encerclement contre des armées, peut-être plus nombreuses encore que jadis sur la VOLGA. Et Berlin annonce que les Russes ont lancé 10 grandes attaques succesives en 24 heures et qu'ils ont préparé la prise des secteurs qu'ils occupent maintenant, à l'aide de 4 formations triangulaires de chars, qui ont franchi le DNIEPR malgré les pluies d'automne malgré la boue....

Certaines unités allemandes ont perdu plus de 60 à 70 o/o de leurs effectifs; le Haut-Commandement de la Wehrmacht est obligé de maintenir en Russie des unités à effectifs réduits: les régiments comptent un millier d'hommes au lieu de 3000.

Il y a deux ans, MOSCOU était menacée Depuis 2 ans, beaucoup de choses ont changé. T. H.

## LA FONTAINE

*Le plus charmant de tous les poètes français est né en 1621, à Château Thierry. Après avoir fait son droit, il est nommé Avocat au Parlement de Paris, mais n'y reste pas longtemps: en 1647, il revient dans sa province, se marie, et exerce avec beaucoup de nonchalance, la charge de Maître des Eaux et Forêts qu'il a hérité de son père. Il ne commence à écrire qu'à 33 ans, et sa première oeuvre est une traduction du poète latin Térence. Les six premiers volumes de ses fables ne sont publiés qu'en 1664 et 1668.*

*Les grandes dames de son siècle l'adorent et lui prodiguent faveurs et pensions: Mme. de la Sablière. la Duchesse de Bouillon et la Duchesse d'Orléans l'accueillent chez elles et lui paient des rentes. Il fréquente la plus brillante société de son temps; La Rochefoucauld et Boileau, Mme. de la Fayette et Mme. de Sévigné, Racine et Molière sont de ses amis. Elu à l'Académie Française en 1683, il continue à écrire, malgré la maladie qui le mine, et meurt en 1695, chez la dernière de ses protectrices, Mme d'Hervart.*

*Cet homme qui fut aimé de tous ses contemporains, a gardé toutes les faveurs à travers toutes les périodes. Sainte Beuve l'appelle „le Poète national", et Victor Hugo a trouvé, pour le caractériser, ce mot juste et profond: „La Fontaine, c'est un arbre de plus dans le bois." Car ses poèmes sont comme la nature même, souriants et cruels sincères et exquis, et traversés des ombres et des lumières mouvantes de la forêt. Lui même, d'ailleurs, semble s'en rendre compte*

*„Cependant jusqu'ici d'un langage nouveau*
*J'ai fait parler le loup et répondre l'agneau,*
*J'ai poussé plus avant les arbres et les plantes*
*Sont devenus pour moi créatures parlantes."*

*Mais la Fontaine ne s'est pas contenté d'introduire la nature dans la société raffinée de son siècle. Il a donné une puissante impulsion à la poésie, par son langage mélodieux et précis, capricieux et infiniment délicat. On a voulu faire de lui un grand moraliste. Mais s'il expose la morale, c'est toujours d'un ton un peu moqueur, du ton de celui qui constate que le monde va mal et s'en inquiète fort peu.*

*„Il sont trop verts, dit-il, et bons pour des goujats:*
*Fit-il pas mieux que de se plaindre?"*
*ou bien „Apprenez que tout flatteur*
*Vit aux dépens de celui qui l'écoute",*

*Ces vers que nous avons appris à l'école semblent lui tenir bien peu à coeur: En réalité, c'est un poète dans tout ce qui fait le poète: il aime dessiner de délicats croquis, il aime rendre le doux murmure des sources et le chuchotement des feuilles à l'automne.*

*En réalité, le titre qui lui convient est celui même qu'il a hérité de son père, „Maître des Eaux et Forêts", et ce magicien doux et distrait semble suivre l'indication de son nom. La Fontaine, comme un puit dont coulerait l'eau la plus fraiche, la plus désaltérante, inépuisablement.*

*Lucie VIDAL*

## LES CHARS DE COMBAT

Chars, tanks, Panzerkraftwagen, ces diverses dénominations française, britannique américaine et allemande, se rapportent au plus remarquable engin de bataille terrestre qui ait été réalisé, puisqu'il permet au canon de se déplacer sous la protection d'un blindage total, à travers la plupart des obstacles naturels ou aménagés: talus, petits cours d'eau, entonnoirs, taillis...

Les chars ou tanks les plus modernes appartiennent à des types très dissemblables: certains, moyennement blindés et armés, sont très rapides et peuvent même dépasser sur bon terrain 60 kilomètres à l'heure. D'autres, aptes à des missions multiples, atteignent encore 40 km. à l'heure et portent une cuirasse d'au moins 5 centimètres d'épaisseur. Un canon d'environ 75 m/m. capable de lancer des obus explosifs ou de rupture de 6 ou 7 kilogs est monté sur ces chars. Certains, enfin, particulièrement puissants, pèsent 60 tonnes et sont blindés à 10 centimètres sinon plus. Ils portent une pièce de canon à longue volée lançant des projectiles de 9 ou 10 kilogs à grande puissance de perforation. Les chars modernes sont équipés de moteurs à haut rendement dérivés de ceux d'aviation, et qui fournissent 500 CV, 650 et même 1.000 C.V. C'est notammment le cas du tank américain „BALDWIN" qui pèse près de 60 tonnes en pleine charge, mais qu'un moteur d'avion de 1.000 C.V permet de déplacer à travers la campagne à plus de 30-km. à l'heure. Tous sont remarquablement aménagés, avec aération forcée par ventilateurs, périscopes pour l'équipage, appareils radio, moteur pour faire tourner la tourelle etc. Un tank moyen coûte près de 3 millions de francs.

### LA CHENILLE

Le char de combat doit sa caractéristique essentielle: la possibilité de se déplacer en tous terrains et de franchir les obstacles, à la chenille. Il est porté par deux rangées de roues ou de galets de grand ou de petit diamètre, caoutchoutés ou à jante métallique, soutenus par de puissants amortisseurs Ces galets ne reposent pas sur le sol, mais sur la "chenille', qui est mûe par le moteur et se déplace constamment. Le train de roulement (les galets supportant le char) roule donc, sur ce chemin métallique constitué par une suite de patins articulés et qui peut à l'occasion former un véritable pont par-dessus les fossés ou les entonnoirs et appuie en tous cas sur le sol par une large surface, si bien que, malgré son poids, le char ne s'enfonce pas. Avec des roues seules, même nombreuses, il s'embourberait et ne pourrait franchir les obstacles.

Cette chenille sans fin tourne autour d'une poulie de renvoi, et d'une autre roue, le barbotin, qui lui transmet la force motrice. A titre de renseignement, le char allemand „TIGER" particulièrement lourd, - il pèse près de 60 tonnes- dispose de chenilles de grandes dimensions dont la partie qui repose sur le sol mesure pour chacune d'elles, 5 m 80 de longueur et 73 cm de largeur.

De telles chenilles permettent de passer des fossés très larges (plus de 3 m 50 pour le tank britannique „CHURCHILL") sans que le char bascule dedans. Assez souples, elles permettent de franchir également des talus. des troncs d'arbres, Comme de plus, le char est blindé et d'une masse importante, il peut tout aussi bien renverser des arbres, des murs, et, ce qui est sa raison d'être, traverser le champ de bataille à l'abri des balles, des éclats d'obus, et de la plupart des obus de moyen calibre, si sa cuirasse est suffisante (comme c'est le cas des gros chars) et attaquer au canon, à la distance la plus efficace les défenses ennemies: blockhaus, artillerie, chars.

## LA POLITIQUE ETRANGERE FRANÇAISE

Alger- le 20 octobre R: Stanley Burch, correspondant special de «Reuter» à Alger, a donné mercredi matin l'information suivante:

«Un important accord sur la politique étrangère française, en ce qui concerne le présent et l'avenir, a été réalisé au cours de la dernière séance du Comité de la Libération Nationale. Cet accord aboutira aux conséquences suivantes:

«1,) La France est prête à reprendre sa place de puissance de premier rang, d'accord avec la plupart des Nations-Unies.

«2,) Elle n'attend que la conclusion de la conférence de Moscou pour engager des négociations avec la nouvelle Commission politique et militaire de la Méditerranée.

### LA NAISSANCE DU CHAR DE COMBAT

Le char de combat à chenille et à moteur a maintenant plus d'un quart de siècle d'existence. Il a été inventé en même temps par les Français et par les Anglais, au cours de l'autre guerre. Le premier „char d'assaut" français, un SCHNEIDER, prototype d'une série de 400,fut essayé le 8 Septembre 1916. Quelques jours plus tard,le 15, sur le front de la Somme, les Anglais lançaient la première attaque avec tanks, rompant les organisations allemandes sur un front de neuf kilomètres.

Jusqu'à l'armistice, les Français construisaient 3.870 chars, dont la plupart de petits „Renault" à deux places, armés soit d'une mitrailleuse, soit d'un canon de 37mmIls avaient essayé un char de bataille, le "IA—F.G.M." de 41 tonnes, armé d'un canon de 105 et commencé la fabrication de chars géants de 68 tonnes, longs de plus de 10 mètres, capables de franchir des fossés de 4 m 50 de large, et portant un canon de 75mm et plusieurs mitrailleuses.

Les Anglais avaient construit moins de chars, 2.700, mais presque tous de grandes dimensions et pesant environ 30 tonnes.

Ce qu'il faut savoir, c'est que les Alliés devaient mettre en ligne, en 1919, si la guerre s'était poursuivie, plus de 15.000 chars.

En 1917—18, de grandes batailles à base de chars avaient eu lieu: bataille de Cambrai fin 1917. avec 400 tanks britanniques, contre—attaque du 18 Juillet 1918 de l'Armée Française avec 500 chars, offensive franco—britannique du 8 Août appuyée par près de 700 chars. La guerre de 1914-18 avait été gagnée en grande partie grâce aux chars de combat. Les Allemands n'avaient pas cru en l'arme nouvelle et cela leur valut la défaite, mais c'est précisément dans les chars qu'ils mirent tous leurs espoirs pour la préparation à la guerre actuelle.

Ce sont les grandes unités mécaniques à base de chars, les „PANZERDIVISIONEN" qui leur permirent en effet, de conquérir si rapidement la Pologne, puis la France et, en 1941. d'envahir la Russie jusqu'aux faubourgs de Léningrad de Moscou, de Rostov,

L'Allemagne, préparant la guerre depuis 1935, avait soigneusement équipé son Armée en chars rapides et puissamment armés. aptes aux opérations de rupture et à l'exploitation menée avec la plus grande audace.

Mais ses succès n'auront été que, temporaires. Les Alliés, mieux équipés à présent que l'ennemi, en avions, en chars; en artillerie, ont chassé les Allemands d'Egypte, de Libye, de Tunisie de Sicile; ils les ont chassés à Stalingrad comme a Koursk. Partout, les nouveaux chars russes, américains, britanniques, tous de la meilleure qualité, appuyés sur une aviation formidable, repoussent l'ennemi vers ses frontières. Le char de combat, le tank, est en train de battre, l'Allemand comme il l'avait fait en 1918

# DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

Nivîsevan
Grigori Petrof

16

Wergerandok:
Qedrî Can

Senelman di anî bîra wan, ku di zimanekî, li Îspanyayê jî hinekan, bi xwendina romanan,, Şiwalî (hesp—siwar) texlît dikirin. Her wekî di kitêba «Donkîşot» de ev mesxeretî hatiye xuya kirin. Senelman û hevalî wî digotin: Ew serserîyên ku xwe didin xwendina romanên vala, divê em wan ji bîr nekin û bi wan re û bi vê ne xweşiya wan re cengê bikin.

Nivîsevanê kitêba «Donkîşot» (Sevante), ji xwendevanê xwe re, wisan gotiye:

«Xwendina romanên ser—guzeştî nîşan pûçbûna mejî ye...»

Di wî zemanî de, Îspanyolan, di welatê xwe de, bîra pêşvebirina û bilind kirina ilim, îrfan û iqtîsadê... ne dibirin û li tu çareyan ne digiriyan û ne di pirsîn. Çimo ku wan dil ne dikirin, ku di vê rê de bi hêş û bi vîn bixebitin. Hinek meriv hebûn ku bi rojan, bi mehan, heta bi salan romanên serguzestî dixwendin. Bi vê xwendinê digotin qey em tiştekî dikin. Di welat paleyên çand «kultur»ê tu nebûn. Heşê milet radiza, nezanî û kêmanî pir dibû... Digel vê qasê, rebenî û xizanî zêde dibû... Quweta dewletê kêm diket. . Exlaq, fikir, îqtisad ber bi îflasê diçû... Ewê ku tiştek fam dikirin jî, xwe da bûn xwendina romanê serguzeştan.., mest ketibûn.

Senelman digot; welatê me hêj qedrê nivîsevanê dahî nizane. Divê, di nav me de jî yekî mîna (Servant) derkeve û kîjan jiyîna bêkêr be, bi qelema xwe xurt ber pêş bike... Yekî mîna (Swift) derkeve û behsa ruhê însanên cûcê, behsa heşê wad ên stewr bike.

Senelman û hevalê wî damane û gotine: «Di nav me de dahî yekî mîna (Servante) nîne. Em nikarin bibin nivîsevanekî weke (Swîft) lê heta ku heşê me û quweta me diçe ser, em dikarin wan tiştên. ku wan bîr birine, di nav xwe de çêkin... Mîqrobên webayê, qolêrayê çima bi çav nayîn dîtin? Teva vê biçûkbûna xwe, ev mîqrob, welatekî xerab dike; miqrobên manevî jî hene ku me seletî ser civat û miletan dibin; ew ji mîqrobê webayê hêj xerabtirin...

Ji ber ku Finlanda welatekî çîrav bû hêlîna ta û janên zirav bû. Xelk, ji ber tayê gelekî di perpitîn û ji ber jana zirav jî qet debar ne dikirin. Di zemanê Senelman de, li hemberê van ne xweşiyan ha cengeke mezin çêbûbû. Senelman digot: ev ne bes e: Xêndî van nexweşiyan, di nav me de ne xweşiya mejî, nexweşiya vîn û nexweşiya rûhî heye. Nexweşiya rûhî, xort giş kirine nav pencên xwe. Piştî deh, panz—deh salê din, bi navê xortaniyê, tiştek na mîne.

Rojekê şahîneteke fotbolê çêbû bangeyeke mezin,muhrîcana sersala xwe ya dehan çê dikir. Ji bo vê muhrîcanê, musabeqeyek mezin û welatî çêkirin. Gotar hatin xwendin. Di vê muhrîcanê de, her yekê ku têkiya wî bi sîporê re hebû, hate dîtin.. Senelman jî, teva hevalêm xwe; li wir hazir bûn Ji xwe, ew bi xwe serekê civateke sîporê fexrî bû. Senelman jî gotarek xwend — Kêfa min xweş dibe, ku dibînim xortê me ên Fîn jî, bi sîporê mijû dibin. Talîma beden bi awakî ma qûl be, pir hêja ye. Ew yûnanê kevn ku felsefe pir pêş ve birine ne bi awakî rasthatî, cîmnastîk û her çeşîd pehlevanî gihandine derenceke bilind... Talîma beden; quwet û sivikahiya laş pirtir, qed û qameta meriv rast tir û xweşik tir dike. Ew bajariyên ku jiyîna xwe, di avahiyên genî derbas dikin, bedena xwe, xerab dikin... edeleyên xwe sist, xwîna xwe jardayî dikin û ew bi xwe reben dibin. Zaroyên wan jî, di dibistanê wan de, li şona xwendina nuh—a wa, li ser awayên xwendina kevn diçin; bi hezaran navê tewşo mewşo û qanûnên bêkir û bê can serê xwe tije dikirin.

Li Almanyê, pirê şagirtê dibistanan, berçavkan didin ber çavê xwe. Ji ber ku çavê wan xerab bûne.

Merivên pişt-qop, hestiyê wan xwar, çîp û zendê wan zirav, rûyê wan ji nûra rojê bê par, mîna giyayê hişk, rûyê wan çilmisî... Ji gundan bêtir, li bajaran pêda dibin. Meriv dil dike, ku wan derxin guheran, wan li nav giyê bi gerînin û hewa paqij bi wan bide standin.

# DÛRIK

## DÛRIKA DANKUTAN

De lê lê,, de lo lo
Lê koçerê Xurfanî
Ez çûm zora Banî
Mi j' xwe re gewrek anî
Mi l'ber mala xwe danî
Mi jê r' ne go ka nanî.

Ez çûm aliyê vî alî
W'ez hatim aliyê wî alî
Xirbê Qeplo bilindcî
Kurka çeto aqincî
Hegê tu l'jina digerî
Her nevalê jinê di bî.
Ez hatim aliyê vi alî
J' qayişê re talatî
jgêridanê re golî
Bi ava xwe xurt in mercî
Ziktilêlî kurikî

Li serê diyara nifafî
wek wawika nizênî
Kum qelêlî meskenî
Kamkutik in biyêrtî
Şuxla şevê merzikî
Pêşmalşînê mehsertî
Çavgozelê mermarî.

Ez hatim aliyê vî alî
Ji diziyê re racnî
Nehfûrçêkir ê mihacnî
Mastfiroş in milêznî
Pîvazxurî stewrî.

De lê lê, de lo lo
Ez hatim aliyê vî alî
Berx bi dû de reşmilî
Ser bi ribê qubalî
Gewr in, boz in bajarî.

De lê lê, de lo lo
Ez hatim nav Omeriya
J' malê xwe re toqî
J' bedewbûnê re gewrikî
Malgeniyê tinatî
Haletçêkir ê herbî
Û firotê cinatî
Nîşandanî çalî
(Nîşancî çalî)
Mêrkujî dêrcemî

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## CENG & BIHINGEH



Balafirgeheke Brîtanî a Mezin- Bombeavêjên giran xwe pêk anîne û bi hewa kevin û zora xwe bidin erd û hêjagehên dijmina, qeflewaporên di wan.



Refên brîtanî ji bombeavêjên giran bihevketî bi ser qefleke dijmin de girtine û wê bombardiman dikin. Bombe xurt û rast li cihdaxwazan ketine.

## TIŞTÊ KO TALYANA DIVÊ BIKIN

Italya divê arîkariya Hevalbendan bike û heke bi awakî hêja xidmeta wan kirin vê demê, Hevalbend bidin eqlê xwe, barê talyana, û mes'ela berpirsiyarbûna wan ji şerî bi çi awayî dikare bête sivik û safî kirin. Di destê Badogliyoyê de niho 9 firqe esker û zehf balafirvan hene û stola talyanî jî, di benderên Hevalbendan de ye û li gora hin nûçeyan dest bi arîkariya Hevalbendan jî kiriye.

LONDRE— Wezîrê Brîtani ê maldariyê Sir Con Anderson di Londreyê de peyiviye, gotinên Mr. Çorçil aniye bîra guhdarên xwe û gotiye: Cihan hewecdarî Frensei ye û Frense ji nû ve wê vegere cihê xwe ê mezin û bilind.

Şal 1 — Hejmar 26

Duşemb 1 Çiriya Paşîn 1943

# ROJA NÛ

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

CIVANÊ MOSKOVAYÊ

### Xebata Qonferansa

Moskovayê dom dike. Ev çand car in wezîrên brîtanî, sovyetî û emerîkanî yên dervekariyê gihane hev û du, û pisporên eskerî jî ketine civanên wan.

Wezîrê emerîkanî ê dervekariyê gotiye rojnamevanan: bihna xwe fireh bikin, beriya ko xebata qonferansê biqede em nikarin tiştekî bejine we. Li gora weşînekên radyoa payetextê brîtanî, civanê Moskovayê de, li ser pirsên jêrîn mijûlahî ji nû ve çêdibe:

1.— Pirsa eniya diwemîn, pirsa derêxistina qiwetên Hevalbendan erdê Ewrûpa Roavayî.

2.— Piştî şerî, pirsa elemanî bi çi awayî divê bête, safî kirin.

3.— Piştî şerî hal û rewişa ewripayê wê çawan çêbibe.

4.— Ji nû ve avakirina her tiştê ko elemana xira kirine. Mopîzan, hoste û xebatkerên elemanî divê bajar, bender, febrîqe, destgeh, karxane, pir û riyên xira bûyî çêkin.

### M. Molotov Komiserê

Sovyetî ê dervekariyê, di qesra wezaretê de, ji bona mêvanên xwe, wezîrê Brîtanya Mezin ê dervekariyê Mr. Îdin û wezîrê emerîkanî ê dervekariyê Mr. Korde Hal sifreyeke mezin daniye û pê qedrê mêvanên xwe girtiye. Gelek mirovdewletên sovyetî ên bilindpaye û pispor û mopîzanên kardariyên brîtanî û emerîkanî ên leşkerî û diplomasî û li wê bûn.

### Siyaseta Frensizî

Nûçegihayê ejensa Roytetî ê xas dinivîse: Li ser siyaseta frensizî a îro û sibeyê, qerarine girane hatine dayîn, Ev in qerarên Komîte Frensizî a xelasiya Welêt:

1.— Frensê haziriya xwe kiriyê û di nav miletên dinyayê, yên sefa pêşîn de, cihê xwe bigire. Di vê babetê de, piraniya hikûmetên hevalbend û Frense gotin û qerara xwe kirine yek.

2.— Ko carekî civanê Moskovayê qediyaye, Frensê bi Kardariyên Behra Spî yên leşkerî û diplomasî bide bistîne.

Di siyaseta Frensê de, Brîtanya Mezin kozîbirê siyaseta wê a amdagirtî ye; ji aliyê din Frense dostaniya xwe bi Sovyetistanê serdest digire, Sovyetistan dewleteke ewripayî a xwedîqudret û payedar e. Herçî Emerîka; ew û Frense bi pêgihanên dil, hiş û cografî û dostaniyeke kevin pev re girêdayî ne. Mr. Îdin û Mr. Kordel Hal beriya ko herin civanê Moskovayê, li Cezayirê sekinîne û bi General De Gol re dûr û dirêj axaftine.

## ENIYA ROHELÊT

### ORDIYA SOR NIHO BER BI BUGÊ VE DIMEŞE

MOSKÛ— Ordiya Sor berê xwe daye sînorên Romanyayê û ber bi Bugê ve dimeşe. Xela elemanî di nav bira Dniepr û Behra Azovê de hatiye neqeb kirin. Eleman xwe bi şûnda dikişînin, xesarên wan djwar in. Di şerê Dniepropetrovskê de bitenê, 7.000 kuştiyên elemani li erdê mane. Ordiyên generalê elemanî Von Manşteyin, milyonek şerevanî tengiyeke giran de ne, û heye ko bikevin halê qiwetên Stalîngradê.

### JI NU VE HER DU ORDIYÊN HEVALBENDAN Di Eniya Talyanî De Pêş Ve Dikevin

CEZAYIR— Pêşveçûna Ordiyên pênc û heşt dom dike. Eleman li hin deran xwe bi şûnda dikişînin û li hin cihên din bi xurtî pê didin erdê. Refên Hevalbendan zora xwe dane balafirgehên elemana yên axa Yewnanistana vegirtî, warên Girîd, Selanik, û Etînayê.

Têtê bawer kirin ko di eniya talyanî de şerine mezin ber bi destpêkirinê ne, û eleman xwe ji bona ber êrîşekê pêk tînin.

LONDRE— Civanê Marêşal Stalîn û Mr. Îdin, wezîrê brîtanî ê dervekariyê du saetan dom kiriye. Mr. Îdin kaxeza Mr. Çorçil daye Stalîn. Her du mirovdewletên mezin zehf qedrê hev û du girtine û axaftina wan bi awakî gelek xweş çêbûye.

Ji her tiştî xuya dibe ko civanê sêserî, bi pêkhatinine hêja pêş ve diçe û gava wezirên dervekariyê û pispor û mopîzan ji qesra Spiredo—Novokayê bi derdiketin şabûniya wan di rûyê wan de dihate xwendin. Dibêjin ko gava nimînendeyên emerîkanî hatine payetextê Sovyetistanê bawer dikirin, qonferansa Moskovayê dest bi haziriyê civanên bingehîn yên ko bêne danîn bike, lê dîtine ko Ûris û Brîtanî dikin qala zehf pirsan bikin û, li ser wan pirsan lihevbên û bigehin netîceyine birinî.

## CIVANÊ MOSKOVAYÊ

### Eniya Diwemîn û Pirsên Cihanê Ên Din

Her çend jî li ser xebata civanê Moskovayê, tiştekî nû ne hatiye gotin nas e ko di vî civanî de, du pronivîs pêşberê hev de ne.

Ûris dixwazin berî her tiştî pirsên eskerî dê bêne safî kirin yên ko bi eniya diwemîn ve girêdayî ne; li ba Ûrisa ko Hevalbendan jî bi qiwetine mezin û li erdê Frensê an Holendeyê an li dereke din dirêjî elemana kirin, dawiya şerî wê bête lezandin, û eleman di nav du êrîşên mezin de zû bişkên; û ko ev tişt pêk hat, safîkirina pirsên siyasî û paşrojmendî hêj siviktir bibin.

Ji aliyê din ev sê sal in; di axa Ewripayê de, du sed milyon însan, dibin hikmê elemana de, di bin zilm û zorkeriya wan de difetisin û Hevalbenda divê wan roj berê rojekê ji vê pêrîşaniyê xelas bikin. Herçî Brîtanya Mezin û Emerîka, bê ko mezinahiya pirsa vekirina eniya diwemîn dûrî çavan xin, dixwazin pirsên siyasî û paşrojmendiyê jî safî bikin, da ko mekevin halê sala 1918 an. Di vê wextê de eleman ji nişka ve şikiyane û her wekî li ser pirşên siyasî û iqtisadî Hevalbenda debar û pronivîsên xwe pêk ne anî bûn, lez û bez li tevdir û çareyan geriyane û zehf pirs an yekcar ne hatine safî kirin an bi awakî ne durust hatine safî kirin. Brîtanya Mezin û Emerîka dil nakin ko ev tişt ji nû ve bê serê wan.

Li ser pirsa eniya diwemîn, Marêşal Smuts, di gotara xwe a dawîn de li Londrê, elam dida ko ev tişt sala ko bê wê çêbibe û heta wê wextê Hevalbendan, di erdê Italya û li erdên din zora xwe bidin elemana û qiwetên Mihwerê.

Ji xwe bombardimana erdê Germanistanê û yên vegirtî; bi awa û xurtiyeke ne dîtî dom dike û zêditir dibe. Ev e tiştê ko heta niha hatiye seh kirin. Bê şik tiştine din jî hene, ko em pê nizanin.

### Rewişa Leşkerî

Di eniyên rûsî û talyanî de pêşveçûna Ordiyên Hevalbendan dom dike û eleman li her derê xwe bi şûnda dikişînin.

Di Pesifîkê de û li erdên rohelatê dûr, Japon û Hevalbend haziriyine mezin dikin. Li reşayî û li behrê şerine giran ber bi destpêkirinê ne.

Di Behra Spî de, nîho ji Sicilyayê û Italya Nîroyî pêve, giravên Kors û Serdinyê jî di destê Hevalbendan de ne, û wextek e, kes qala Ordiya brîtanî yek û a emerîkanî heft nake. Heye ko wextekî gelek nîzing de, navê wan Ordiyan ji nû ve dêbene bihistin.

### Mizgîniyeke Mezin

Di erdê Îranê de, der eyaleta Kurdistanê, xortên Kurd bi navê Niştiman «welat» kovarekê çap dikin; kovareke qedirgiran, bi bendên hêja. Kurdên Îranê jî mîna yên Sovyetistan, Iraq û Sûriyê, ji bona pêşveçûna miletê kurd dest bi xebatê kirine

### Radyoyên Kurdî

Me bihistiye ko wexteke nîzing de, Radyoa Tehranê jî, bi kurdî wê bibêje. Ji xwe Radyoyên Bexda, Bêrût û Radyoa Rohelatê Nîzing, hero du sê cara bi Kurdî dibêjin.

### Kovar û Rojnameyên kurdî

Bi hênceta derketina Niştemanê em tînin bîra xwendevanên xwe ko kovar û rojnameyên kurdî ên hêjatir ev in: Riya teze, Erîvan, Sovyetistan; Niştiman, Lehîcan, Eyaleta, Kurdistanê, Îran. Jiyan, Sileymaniye Iraq. Gelawêj, Xan Esterabadî 14 Terîq Samuel, Bexda Iraq. Hawar Metbe'e Tereqî, Şam Ronahî Metbe'e Tereqî Şam.

### Qewil û Ayîn

QEWIL

Çûm Bexdayê çar derî ne<br>
Her çar derî qubletî ne<br>
Mi dî sê siwar<br>
Ji Bexdayê bi derketiye.<br>
Eslê wan siwara dipirsî ye<br>
Ev her sê siwar<br>
Ji Ocaxê Bûbê Gurî ne.<br>
Serê simê wan siwara<br>
Li erşê xwedê ne<br>
Kunrimê wan siwara<br>
Li rûkê erdê ne.<br>
Zengûyê di wan siwara<br>
Safî ji birqê ne<br>
Ev her sê siwar<br>
Siwarê di mala Bûbê ne;<br>
Siwarê pêşî Bûbê gurî ye<br>
Siwarê navê Sîn û Seydoş e<br>
Siwarê diwayê Bûbê Lawên e.

SOVYETISTAN




ENIYA ROHELÊT

## STOLA EMERIKANI

### STOLA CIHANÊ A XURT Û ZEXIMTIR

Mr. Hanson Baldwîn di rojnama emerîkanî Nû York Teymis de qala xurtiya Stola Emerîkanî dike û hêjmarên jêrîn dide zanîn:

Stola Emerîkanî ji 21 zirehpûş; heşt hebên wan ji tîpê nûjen in; ji 13 û heta 15 gemiyên balafirhilgir 12 balafirhilgirên arîkar, ji 50 û heta 60 qriwazor, 200 û heta 220 bertorpiyor, û 165 û heta 185 noqavan bihevketî ye. Dîsa li gora texmîna Baldwîn, di destê emîraliya Japonî de 10 zirehpûş. 8 gemiyên balafirhilgir, 3 û heta 4 balafirhilgirên arîkar, 30 û heta 35 qriwazor, 75 bertorpiyor û 80 noqav hene.

Nivîsevanê emerîkanî bi ser ve zêde dike û dibêje:

Ji wê qiyasê xweş têtê seh kirin, çire em dikarin pişta japona bişkînînin, her wekî di nav şeş mehên ko di pêşiyê de ne, wê bête dîtin. Ji xwe Stola Emerîkanî bê ko li hêviya dawiya şerê Ewripayê bimîne; di Pesîfîkê de dest bi a rişa japonan bike û zora wan bibe.

# MÊRXASÊN SOVYETISTANÊ

**Egîdiya du dotên Sovyetistanê**

Hikûmeta sovyetî ji Ane Lisitsina û Marî Melentievayê re, du kêçikên û-rispayeya Mêrxasên sovyetistanê da-ve.Evdu keçikên he,ji erdê Kareliyê ne. Berî şerî, di gundê xwe de dixebitîn. Lê eleman hatin, zeviyên wan, mekîne û zad û dexlên wan talan kirin, û keriyên pez û dewa-rên wan û cotkarî, bi zor bi xwe re birin. Wan her du keça li vî halî nêrîn û qerar dane, şerê elemana bikin. Ew di nav dar û bera re li ser ş i v î l a re meşiyan û bitenê gava, dibetilîn, hal di wan de ne dima, disekinîn, hinik bihna xwe vedikirin. Ew li erdê ko keti bû destê d i j m i n a gelek bi nav de çûn, hêdi, hêdî û bi dizî û tedbir xwe gihandine Ûrisên ko her çend jî di destê dijmîna de bûn,bi canfidayî xidmeta welatê xwe û şerê elemana dikirin.

Mehek di bajarê ko tê de eleman hebû xebitîne, çavê xelkê vekirine, nav di wan dane û xebe rên hêja ko bi kêrî qomandariya rûsî tê civandine. Piştî ko ev tişt pêk anîne,her du keçik ji nû ve bi rê ketine; careke din riya dar û deviya û çol û çiya girtine û meşiyane.Diviya bû gelek bala xwe bidin dewriya elemana. Li dor û pêşiya xwe dinê-rîn û ji hev û du re digotin: divê em bilezînin, wext teng bûye; gihane ser avekê, her du alî di destê ele-mana de bû, û elemana nobetçiyên xwe li ser hemî pira danî bûn.

Çi dima li destê wan!! Şêwira xwe kirin, kaxezên hêja, di nav kofiyên xwe de pêçan û li avê xistin. Dinya şev, û av cemidî û xurt bû.Çênedibû ko dengê xwe bikin, dijmin nîzing bû. ji cilê xwe aziz dibûn, ji ser mayê diqerisîn û pêlên avê li wan dixist û ew dibirin; pir ne borî laşê a ciwan cemidî, qiwet têde ne. ma ji dest hilanînê ket, li ber avê çû. Di wexta mirinê de gelo çi dihat bîra wê keçkê ? Pezên wê, dergistiyê wê, dîn dê û bavê wê ?! No... Kaxezên ko di nav kofiya wê de veşartî bû dihatin bîra wê. Wê ew Kaxez dane hevala xwe û bê gotin rûbê xwe spart. A mezin gava dît ko hevala wê li avê fetisî,xwe hêj bêtir şidand û xwe gihand wê aliyê avê. Tev cilên şil,û bê xwarin û vexwarin rê girt û pênc roj meşiya, heta hidûdê ko eleman tê de bûn derbaz kir û xwe gihand Ordiya Sor. Keçên Ûrisa bi vî awayî ji bona mezinahî û serbestiya welat û miletê xwe dixebitin, ma miletên ko keçên wan wîlo ne tu car dikevin?!..

LUCIE VÊDAL

# DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

## BARANÊ

Baran barî bi nîmeta
Rûkê erdê kir xeta
Ramîsanê keçika
Li mala bavê adeta
Li mala mêrik qebhetal!...
Were lê lê baranê
Baran barî bi zenbîla
Rûkê erdê kir bîra
Ramîsanê keçika
Xweş in' l'malê d'wezîra
Hawar lê lê baranê !!...
Ka sozê bin eywanê
Ka xwediya kesrewanê
Rêşiyê şarê berdanê
. . . . . . .
Hawar lê lê baranê

## EMÎNA

Eman ne man lê Emîna
Nav min û te dîwar e
Pehnkî lêxîn werîn xwar e;
Serê memkên te zer bûne
Alîk sêv e û yek hinar e
Yek bihok û yek pirtiqal e;
Kerem bik' were male.
Te dî li bin mêwa tirî
Guêşî bi guêşî diçinî
Heb bi heb jê dikirî
Teres li keçkê fitilî
Lê û lê lê Emîna.
Memkên te sohr û sipî ne
Wek fîncanê fexfûrî ne
Wek sêvê Meletê ne
Serê sor e kokspî ne.
B' şêx û mela t' a min î
Tim mehbûba l'ber vî dilî.
Te dî li pehnava reza
Ez çûm b'rûkî sohr b'geza
Tu b'nêr l' kolan û qeza
Ezê gewrê birevînim
Bibim welatê çerkesa.

# KOVAREKE KURDI A NU

**Li Erdê Iranê Tête Deréxistin**

Hejmara Niştimanê a pêşîn gihaştiye destên me. Ji her tişti bêtir kêfa me ji wê yekê ra hat ko di erdê Kurdistana ko di bin hikmi Îranê de ye jî zimanê me tête nivîsandin û çap kirin; bi vî awayî ew di Iraq, Îran, Sûriyê û Sovyetistanê de digehe çapê. Niho bi tenê welatekî dimînê ko kurdên wî ji vê nîmetê mehrûm in. Me hêvî ji Xwedê heye ko ew jî zûka bigehîn vê nîmetê.

Niştiman bi zarê Mukriyê û bi tîpên erebî ye. Di vê hêjmara Niştimanê de tiştên jêrîn hene:

Amancî ême — Tema' — Pêk kewin ta ser kewin — Mêcer Son der heq be kurd çi elê — Serkewtin be zor û kew niye — Beşî edebî —Şairî be nav û bang — Cigare çûn êkêşrêt — Kurd û Isbetelimem — Kurdistan malî kurd e —Pelamêrekeyî ew salî eleman le Rûsya.

Di rûpelê Niştimanê a pêşîn de xwedî dibêje ko ev nivişt ji ber ko ketiye ber lezê ewçend çênebû, lê hêjmara tê wê jê tekûztir bibe. Welê jî divêtin; em jî holê hêvî dikin.

Lê li gora ko ji me re hatiye gotin Niştemana ko niho bi tî pên erebî dertêt heta çendekî din, ewê bi tîpên me ên kurdî derkevit Ev mizgînî ji me re bi qasî mizgîniya derketina Niştimanê hêja ye. Ji xwe jê re delêletên hene. Di ser serê sernama Niştimanê re tavek, tava ala me heye. Di nav daîra tavê de du tîpên kurdî têne dîtin. Ev tîp bi mana (Jîna Kurdistanê) ne û destpêka bi kar xistina tîpên me ye.

Xwedê ji Niştimanê re emirekî dirêj bide û hevalên wî zêde bike. — RONAHÎ —

CEZAYIR — Qerargeha Frensizî a mezin dide zanîn: Nêçîrvanên frensiz 12 balafirên elemanî xistine erdê û xesar gihandine 2 hebên din.

Weşington — Dîwana emerîkanî a çek û posatên şerî elam daye ko di wextekî gelek nîzing de, ji febrîqeyên emerîkanî di nav her 5 deqîqan de balafirek wê derkeve.

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## CENG & BIHINGEH



GENERAL DE GOL; ÇAWÊ XWE LI DERYAVANAN DIGERÎNE



WAPORŞEREKE FRENSIZÎ LEŞKER ANIYE GIRAVA KORSÊ

## BER BI QRIMÊ VE

MOSKÛ — Piştî vegertina Melîtopolê. Ordiya Sor Îerê xwe daye hêla nîroyî û pêş ve dikeve. Di Melitopolê de eskerên elemanî bi deh hezaran hatine qelandin û şerê dawîn de 14.000 kuştiyên elemanî li erdê mane.

Niho elemanî xwe ber bi Xersonê ve bi şûnda dikişînin, qiwetên sovyetî li pey wan in, wan dieşînin. Xerson ji bendarên ko ji Qrimê hatine tejî ye. Eniya elemanî dihele û perîşaniyeke mezin û tinîam di pêşiya elemana de ye. Di hêla Kievê de qiwetên rûsî bi sed û du sed tangan êrîşî elemana dikin.

1ère ANNEE LUNDI 1 NOVEMBRE 1943 NUMERO 59

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Aujourd'hui, le monde entier a les yeux tournés vers l'U.R.S.S.

Tout d'abord, parce que, poursuivant leur avance, les armées soviétiques enfoncent le dispositif allemand en Ukraine, menaçant les unités de la Wehrmacht en Crimée d'une catastrophe pire que celle de Stalingrad.

Les Ministres des Affaires Etrangères britannique, américain et russe et les experts qui les secondent, discutent les mesures pratiques, militaires aussi bien que politiques, qui donneront le coup de grâce au Reich.

Les délégués des trois puissances alliées se réunissent tous les jours, dans une atmosphère de parfaite cordialité. Le plus grand secret entoure leurs rencontres. Mais un détail annoncé à la presse permet d'espérer que nous apprendrons bientôt, les heureux résultats de la Conférence de Moscou: en effet, MM. Eden, Cordell Hull et Molotov consacrent tous les jours, de longues heures aux réunions, et n'ont pas fait exception à cette règle, Dimanche dernier. Samedi soir, les experts civils et militaires se sont réunis pour la première fois, après la séance des trois Ministres.

Cette réunion d'experts est accueillie très favorablement dans les milieux britanniques. On incline à y voir la preuve que les conversations entre les trois ministres ont évolué de façon si satisfaisante que, l'accord de principe obtenu sur certaines questions, on a déjà pu passer aux mesures pratiques pour son application.

Du côté soviétique, les commentaires ne sont pas moins favorables. Ainsi, la revue de Moscou „LA GUERRE ET LA CLASSE OUVRIERE" écrivait récemment: „On vient de créer les conditions qui permettront aux troupes soviétiques en même temps qu'aux forces anglo-américaines, de porter des coups simultanés et décisifs à l'Allemagne hitlérienne, pour abréger ainsi la durée de la guerre".

Pour accélérer les travaux de la Conférence, d'importants entretiens viennent d'avoir lieu dans la capitale de l'U.R.S.S.

M. Cordell Hull a eu une longue conversation avec M. Molotov et s'est également entretenu avec l'Ambassadeur de Chine à Moscou. Plus tard, il a reçu d'autres diplomates alliés, et notamment les Ministres du Canada et du Mexique.

De son côté, M. Eden a longuement parlé au Maréchal Staline. On ignore les sujets sur lesquels a porté cette conversation qui a dépassé deux heures; mais on croit savoir que le Ministre des Affaires Etrangères du Royaume Uni aurait remis au Chef du Gouvernement soviétique, une lettre personnelle de M. Churchill.

Notons encore que depuis plus d'une semaine, MM. Eden et Cordell Hull ont été accompagnés à toutes les réunions, par leurs conseillers militaires: cette circonstance permet d'affirmer que les gouvernements britannique et américain sont d'accord avec le gouvernement soviétique pour voir dans une rapide défaite militaire de l'Allemagne l'objectif principal de la Conférence de Moscou.

Il semble bien que les délégués américains — qui, à leur arrivée, considéraient la Conférence comme une réunion préliminaire — se soient rangés à l'avis de leurs collègues soviétiques et britanniques, prêts à affronter des problèmes très différents et déterminés à atteindre une complète entente.

Il n'est pas moins important de constater que les trois puissances ont reconnu d'un plein accord, l'étroite liaison qui existe entre les problèmes militaires et politiques.

Cet accord épouvante les Allemands qui s'évertuent par tous les moyens à faire croire à un prétendu désaccord entre les Nations Unies. Il est intéressant de citer à ce sujet, la déclaration que le Comte Sforza vient de faire à un journal de Bari:

« L'issue de la guerre en Europe dépend dans une grande mesure de l'issue de la Conférence de Moscou: car si les Allemands ne peuvent plus espérer le moindre désaccord entre les Alliés, la guerre pourrait se terminer bien plus rapidement que l'on ne le pense. »

Et le Comte Sforza terminait sur ces paroles:

„Ce que L'U.R.S.S. recherche, c'est une paix durable qui lui permette de développer ses ressources. Leurs inépuisables richesses agricoles et industrielles exploitées au maximum, les Russes pourront atteindre rapidement le niveau industriel des Etats Unis".

T. H.

## LA LIBERATION DE LA CORSE

En moins de trois semaines, les patriotes corses et les Commandos français viennent d'arracher la Corse à l'Allemand envahisseur. Les détails de cette opération montrent que la France est toujours forte et capable de toutes les audaces.

C'est le Commandant Colonna d'Istria qui organisa et dirigea cette opération. Vivant dans le Maquis depuis plusieurs mois, avec ses hommes il était en relations par radio avec le Comité National Français d'Alger.

Lorsque la nouvelle de la capitulation italienne fut apprise, un mouvement de fièvre s'empara de tous les patriotes, impatients d'agir. Mais Colonna d'Istria réussit à maintenir l'ordre. Cependant, il n'y avait pas un instant à perdre. Les Commandos français devaient intervenir dans le plus bref délai, pour soutenir l'insurrection.

Dès le 9 Septembre, les patriotes corses faisaient parvenir au Commandant en Chef de l'Armée Française, un message lui garantissant le libre accès du port d'Ajaccio. Mais la supériorité numérique était du côté de l'ennemi. Ses forces étaient les suivantes:

— 60.000 Italiens, composant le 7ème Corps d'Armée du Général MAGLI, et tenant le centre de l'île;

— 15.000 Allemands, massés dans le triangle SARTENE PORTO - VECCHIO, BONIFACCIO;

— plus la Division allemande, repliée de Sardaigne, avec 150 chars, des canons et de l'aviation.

Du côté français, 12.000 patriotes, armés de mitraillettes, de fusils de chasse et de poignards, et pour soutenir leur action, un Bataillon de Choc de l'Armée Française.

Ainsi, la situation était particulièrement angoissante. Pourtant, la décision fut prise: les Français allaient risquer l'opération, avec leurs propres moyens, car le Général Eisenhower qui avait donné son accord de principe, et qui envisageait le débarquement avec bienveillance, ne pouvait distraire de ses forces engagées dans la sévère bataille de Salerne, ni un avion, ni un bâteau.

Le Bataillon de Choc, première unité disponible sans délai, était fin prêt et rongeait son frein sur une plage du voisinage d'Alger. Il fallait le transporter de nuit, sans aucune protection aérienne. On chargea l'Amirauté Française de cette mission délicate. Troupes et matériel furent alors entassés sur le croiseur „MONTCALM", le croiseur „JEANNE D'ARC" revenu des Antilles et remis en état dans un temps record, les contre-torpilleurs „TERRIBLE" et „FANTASQUE" rappelés de la Baie de Naples, et le sous-marin „CASABANCA" qui s'échappa de Toulon, le 27 Novembre 1942, à travers un champ de mines et sous le feu des avions allemands.

Les traversées se firent à grande allure, tous feux éteints. C'était une nuit de pleine lune, combien dangereuse, mais sa douceur apaisait les soldats impatients aux nerfs tendus par l'attente immobile. Le passage au large des côtes de Sardaigne était particulièrement inquiétant. Mais la chance sourit aux audacieux, et la flottille ne fut pas éventée par l'ennemi.

Et au matin, de la mer grise et du ciel gris, surgit la Patrie de Napoléon. D'abord, la pointe des Sanguinaires, avec son phare, puis la tache d'Ajaccio, avec ses maisons blanches, roses, vertes et jaunes, dominées par sa Cathédrale ocre et sa citadelle grise.

Le débarquement s'effectua bientôt, et ce fut une explosion de joie. „Ils ont débarqué;" Tel est le cri qui courut de bouche en bouche, dans la ville et se propagea dans l'île toute entière.

Dès le 19, le Bataillon de Choc entrait en action. Au mordant des Patriotes, il ajouta sa solidité, son expérience, et sa technique militaire. Sartène fut prise, puis Levie et Zonza. Sous la pression des Commandos français, Bonifacio et Porto-Vecchio furent évacués le 21 et le 23 Septembre. Les Patriotes purent enfin souffler.

Les renforts arrivèrent, cette fois par un véritable convoi, dont faisait partie le paquebot „VILLE D'AJACCIO", repris dans le port. Des tirailleurs marocains, des Tabors, ainsi que des chars légers, des canons anti-char et de D.C.A., de l'essence furent débarqués. Une base aérienne s'organisa, nos escadrilles accoururent à la bataille, chassant les avions allemands du ciel corse.

Le 4 Octobre, Bastia fut libérée, et dans une ultime poussée, nos troupes et les patriotes jetèrent définitivement hors de l'île les derniers éléments ennemis.

Cette opération, spécifiquement française, entreprise par l'aviation, la marine et l'armée françaises, avait réussi dans très peu de temps.

On ne pourra jamais raconter tous les actes d'héroïsme et d'abnégation, dont firent preuve les patriotes corses et les soldats français, au cours de ces trois semaines; ils sont trop nombreux.

Qu'il me soit permis cependant d'en citer deux.

Du 16 au 18 Septembre, pendant 48 heures, le Lieutenant Cucchi, avec trente hommes, tint en échec, au Col de Baccino, une colonne allemande de huit chars/, et de trente camions. Les patriotes se battirent comme des lions, mettant à profit leurs connaissances approfondies des terrains montagneux et des routes en lacet où ils opéraient. Ils firent sauter les chars, mitraillèrent les camions, et obligèrent les Allemands à se retirer, laissant 50 morts, 15 prisonniers, trois chars et douze camions détruits.

Partout, la guérilla obligea les Allemands au recul. Les Tabors marocains s'illustrèrent, eux aussi. Voici un audacieux coup de main qu'ils ont réalisé moins de dix heures après leur arrivée. 120 hommes engagés. Sept heures de marche, de nuit, dans le maquis. Dans ce maquis, où chaque mètre de progression est un effort contre les broussailles qui arrivent à hauteur d'homme. Et cela avec le matériel, les obus de mortier, et les bandes de 250 cartouches de mitrailleuse, et les mines aussi. Le résultat? 15 prisonniers, des armes automatiques récupérées, trente hommes hors de combat un poste ennemi enlevé...

La libération de la Corse a redonné non seulement aux Français, mais aussi à l'univers tout entier, le sentiment de la renaissance française. C'est ce que le Général de Gaulle a exprimé dans son discours d'Ajaccio le 8 Octobre:

„Tandis que nous autres Français éprouvons la certitude qu'après tant de leçons, une ère nouvelle de grandeur doit s'ouvrir pour notre pays. Il semble", a-t-il dit, „que le monde en prenne aussi conscience".

Mais la libération de la Corse est aussi le prélude de la libération de la France. Et de même qu'en Corse, nous verrons demain, se dresser dans toute la France, la Croix de Lorraine, „signe national de fierté et de délivrance".

LÉO LEROY

## L'ANNIVERSAIRE DE L'INDEPENDANCE DE LA TCHECOSLOVAQUIE

*Le 28 octobre dernier l'une des Nations Unies, la Tchécoslovaquie, fêtait le 25 ème anniversaire de son indépendance. Il y a un quart de siècle, un soulèvement spontané du peuple tchécoslovaque a mis fin à la domination germano-magyare de l'Empire Austro-Hongrois, et a instauré la liberté, désirée et préparée unanimement par des générations entières.*

*Durant toutes les années de son existence d'Etat complètement indépendant, depuis 1918 jusqu'au désastre de Munich en 1938, la République Tchécoslovaque s'est développée progressivement en un Etat fort et heureux. Un progrès continu dans les domaines social et culturel, les finances et l'économie bien équilibrés-telles étaient les bases de la vie en Tchécoslovaquie. Guidée par son grand Président-Libérateur Masaryk.. lire: Masaryk.. et par son disciple, ami et successeur Bénès.. lire: Bénèch.. la nation tchécoslovaque a construit son Etat en une démocratie moderne, appelée à juste raison „la forteresse de la démocratie en Europe Centrale".*

*Le premier parmi les Nations Unies, le peuple tchécoslovaque est tombé victime de l'agression allemande. Privé de toute aide extérieure de par sa position géographique, le peuple tchécoslovaque n'a cependant jamais cessé de resister à son envahisseur. Les exécutions et les massacres quotidiens ne pouvaient point briser l'âme de cette nation vaillante et éprise de liberté et de principes démocratiques. A l'étranger, une nouvelle armée tchécoslovaque s'est groupée volontairement autour du Président Benés.. lire: Bénèch.. et a prouvé sa valeur, sur terre et dans les airs, en Pologne, en France, en Grande Bretagne, dans le moyen Orient et dans l'Union Soviétique.*

*La victoire des Nations Unies est plus proche que jamais. Elle rétablira la liberté totale bien méritée de la République Tchécoslovaque, selon la devise instituée par son Président Benès.. lire; Bénèch: „Une Tchécoslovaquie libre dans une Europe libre".*

**Strana Kurdî**

# QADÊ SA'DÛN

Wey la de wayê... Emînê bankir: Melesê porkurê bira heft qeda tê keve li dewrana Cihanê li bext û wijdanê dinyayê.

Heyfa mêrê çê, heyfa kurê Sado, kekê Melesê li Şewaşiye, here ser mirine û ser belayê.,.

Destê bi tenê, şêrê Elî be, xwedanê zulfeqêr be, tu carî deng jê nayê.

Xwedê dîne mala Bedir-Xanê! Lawê Emer Mehemed Elîyê Emîn, Emerê muhacir, ji Nîro bi şûnda koşk û serê Qadê Sa'dûn şixat girtine agir berdayê.

Emînê bankir: Melesê porkurê bi diyarê Gezel-şêxa deştê keve sê denga li Hecî Hemîd axa, li pilengê çemê reşa, li bavê Qenca, li yextiyarê apê bi hawar û bi gazîke Bê:

Mala Hemê Xêro kuştine, Qadayê Sa'da seîsê Balçîqê, ferxê mala Elîyê Dawo. Îro xal xaîn in, di gaziya xwarziya nayê. Emînê bankir: şaxê Rebenê, Fersê porkure !

Sibe bû bira şerek çêneba li Şewaşiya şewitî, li Holanê jorîn li milê ziyaretê, li perê wa dara.

Ji Nîro bi şûnda bira reqîn ne hata ji gawur enextara, ji Kazolê destê mala Emer bira bişewite mala Bedir-Xanê Emer û Mehemed Elîyê Emîn, û Ezokê Mehemed gulakê xistine li bejna kurê Sa'do kekê Melesê, seîsê Balçîqê suwarê Reş Kumêtê, kuştine Gula suwara.

Emînê bankir: Melesê lawo, vê sê bi Diyarê Gozel-şêxa deştê keve...

Sê denga bi hawar ke li Hacî Hemîd axa li pilingê çemê Reşa bibêje:

Mala Hema Xêra kuştine, qadê Sa'dûn seîsê Balçîqê Neqeb fire kirine, li dijmina, li neyara.

Emînê bankir: Melesê lawo ez û tu qijikê ser diyara.

Emînê bankir: şaxê Rebenê, Melesê porkurê, Şewaşî bişewîte, bi kevir e, ez bala xwe didimê, sibe bû sê suwar tê ne û dibuhurin.

Suwarê pêşiyê Bedir-Xanê Emer e dil kafir e û suwarê ortê— Mehmûdê Emer Beg e, bi dev dost e û bi zik dujmin e, suwarê da wîyê Mehemed Elîyê Emîn e.

Ez bala xwe didimê şêwirke giran danîne, qala kuştina kurê Sa'dûn, Kekê Melesê, seîsê Balçîqê qise danîne û behs kirine.

Emînê bankir: Melesê, porkurê sibe bû şewaşî bişewite wa bi tirî.

Mi dî sibe bû sê suwar têne û dibuhurî, ez bala xwe didimê suwarê pêşiyê Bedir-Xanê Emer e; Kafirê bi şewqe kirî.

Emînê bankir: Melesê porkurê, here pêşiya Bedir-Xanê Emer, wî gawurî: bibêje çam .we, li ber destê şêx Osmanê lawê şêx Emîn tobê kirî;

Wê îro girtine ser koşk û qonaxê Qadê Sa'dûn Kekê Melesê, we sûnd xwarine û telaqê xwe avîtine.

Çawa hûn di Keçik û Kura ne buhurî,

Qado bankir: Emînê dayê, mi ji vira heta bi wira, sibe bû, şerek çêbû, li Şevaşiyê û li ba,êkê, li nav bêna her du gira.

Qado bankir: Emînê dayê, şîrê xwe li mi helal ke, ezê bire vim mala Hemo û Xêro. maleke xaîn e, tirsa mi tê, ji wê tirsê, wê di pê mi ra bikujin Melesa gewr û Mehmûdê bira;

Şahidê Qadê S'adûn kekê Melesê gelek hebûn, ji şifaqa sibêda heta bi mexribê ne hiştiye ko ji mala Hemê Xero, bira hefadiyê bike li meytê bira.

Sibe bû dilê mi di Xemo da bira şerek çêneba, li milê Ziyaretê li perê şewaşiyê , li rexê golê da.

Emînê bankir: Melesê rebenê, bi diyarê Gozel şêxa deştê keve, bi hawar ke, li hacî Hemîd axa li bavê Qenco, li pilingê Çemê Reşa, bê heyfa Qado maye, li baskê Xwedê û mêrê çê da.

Yar e sed carî bi min yar e;
Şewaşî, bi şewite bi kelem û bi hûr dar e, tivinga destê Bedir Xanê... Emer enexdar e.

Ji êvara Xwedê da, dengê kuçûk çapiliyê mala Hemo Xero, li ser serê Qadê Sa'dûn, kekê Melesê. seîsê Balçîqê himîn e, û nale nal e.

Xwedê dîne mala Ezokê Mehemed ji muxrib û bi şûnda, gulakê xistine li bejna kurê Sa'do kekê Melesê, pişika Qado ji jor ve anî xwar e.

Emînê bankir: Melesê porkurê, Bexterî gundê hecî Hemîd axa dûr e; şemrexî xaîn in, ne gazî û ne hawar e...

Mala Têlî axa, xalên Qado; di gazia wî da nayên..,

Emînê bankir: Melesê porkurê, dilê mi dilekî li dîn e, vê sê bike û bilezîne xwe bi diyarê Dêrika çayê Mazî gîne; sê denga li Ilyas efendiyê, Osmanê Reşo, bavê Memduh bike hawar û qîrîn e, û bira gazike mezin di hawara Qadê Sa'dûn werîne;

Bibêje; mala Hemo Xêro, ji berê da malekê xaîne bibêje îro çend suwar û gelek quwet xwe bi şewaşiya şewitî gihînin;

Bibêje: Qado kuştine, em ni zanîn saxi ne bi birîn e, hûn jî bikûjin Bedir-Xanê Emer û Sadiqê Mehemed û Mehemed Eliyê Emîne

Heyfa Kurê Sa'dûn, Kekê Melesê, seîsê Balçîqê ferxê mala Eliyê Dawo jê hilîne.

Emînê bankir; şaxê porkurê Melesê dêfanê sibe bû bira şerek çêneba, li şewaşiyê, li milê ziyaretê, li Holanê jorîn, li wê banî, mi dî ji nîro bi şûnda gule û barûdê mala Hemo Xêro koşk û serê Qadê Sa'dûn, Kekê Melêsê tev hilanî.

Xwedê dîne, mala Bedir-Xan bawê Emer û Mehemed dîyê, Emîn û Emerê Muhacîr û çil û pênc peyê şewaşiya, ji nîro bi şûnda li ser kekê Melesê kirine gawuristanî,

Emînê bankir: Melesê porkurê bi diyarê qûç Gozelê keve, sê denga bi Hawarke, li Hacî Hemîd axa li pilingê Çemê Reşa li bavê Qenco, li yextiyarê apê bibêje, mala Hemo Xero kuştine, Qadê Sa'dûn kekê Melesê seîsê Balçîqê suwarê Reşkumêtê, havênê mêra ji mala bavê min û we hilanîne.

Emînê bankir: Melesê porkurê şerek çêbû li şewaşiyê bi du ciya, Xwedê dîne mala Silatiya şewaşîya, dengê tivingê mala Bedir Xanê Emer ketin kur û çiya, bişewite mala Bedir-Xanê lawê Emer û Mehemed Eliyê Emîn û Sadiqê Mehemed kuştine, Qadê Sa'dûn kekê Melesê seîsê Balçîqê, çira me vemirî ûçaxê mala Eliyê Dawo ji binîda wergeriya!!...

EBDILHADÎ MIHEMED

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

**Xebat - Fidakarî - Serfirazî**



Sihvanvanên Rûsî Li Balafirekê Siwar Dibin.



Ordiya Sor Ji Nû Ve Avahîyekê Xelas Kiriye.



Balafirvanên Rûsî Beriya Ko Êrîş Destpê Bike Li Xerîteyên Xwe Dinêrin.

# BOMBARDIMANA KASSELÊ

## HEZAR & PÊNC SED TON BOMBE AVÊTIN

LONDRE— R: Wezareta Brîtanî a hewayî dide zanîn: şevêçûyî refên brîtanî, ji bombeavêjên giran bihevketî, bi ser axa Germanistanê de girtine û bi awakî gelek xurt karxane û febrîqeyên bajarê elemanî Kassel yên çek û posat û cebilxanan bombardiman kirine.

Refên me ên din li şaristanê elemanî Frankfurt xistine. Ji aliyê din bombeavêjên me Muskitos di axa Kolonyayê de, gelek hêjagehên dijmina dane ber derb û agirê xwe û torpîl reşandine şet û robarên elemanan, Refên me rastî zehf nêçîrvanên dijmina hatine û piraniya wan xistine erdê. 44 bombeavêj û nêçîrvanekî me venegeriyane warên xwe.

Sal 1 — Hejmar 27

Duşemb 8 Çiriya Paşîn 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

STÊRA KO VEDIMIRE

### Meha Reştir

Eleman dikevin meha vî şerî a reştir. Bendên rojnameyên elemanî û rapor û nûçeyên ko ji hundurê Germanistanê digehin velatên bêteref tu şik na hêlin ko çavê xelkê şikiyaye, û hêvî û niyaza wan ne maye.

### Her Çend Jî Elaman

Li Hikûmeta xwe raubin, bê dilî û perîşaniyeke çeêb bi ser wan de girtiye.

Serekên Germanistanê ên eskerî û siyasî, gelek caran li hev civiyane û li çareyên rakirina m'anewiyeta xelkê xwe geriya ne.

### Hin Dixwestin Pale

Û xebatkeran qanî bikin ko Germanistan û Sovyetistan bê zehmet dikarin lihevbên; û hinên din digotin xelkê ko Hikûmet her tiştî dê bike dako Eleman û Dewletên Englo-Sakson, Brîtanya Mezin û Emerîka vî şerî ji nav xwe hilînin. Ev lorî û stranên honik-kirina dil û hişên xelkê, di kîjan meqamê de jî bêne gotin, çavê xelkê Germanistanê şikiyaye, û agirê vên û xeyretê di dilê wan de temiriye.

### Nûçeyên Tehil û Giran Yên

Ko ji eniya Sovyetî tên hal di wan de na hêle.

Xelk hêj bêtir guhdariya Radyoyên brîtanî dikin û tiştên ko dibi bîsin di nav bajaran de zû belav dibe. Hefta borî bi tometa ko Radyoya Ingilistanê bihistine deh eleman hatine girtin û bi qerara mehkema eskerî, ew dan ber tifingan.

### Rewişa Eskerî

Êdî dergehên erdê Qrimê di pêşiya Ordiya Sor de vebû ne, û di roavayê Melitopolê de, bihna elemana diçike û ew dibin derb û agirên çekên rûsî de dihelin. Ji Kremençûgê û heta Behra Azovê eniya elemanî bûye bir û perçeyên ji hev ketî.

Di beriya Nogaiskê de, eleman ketine perîşaniyeke giran ya ko ji a Stalîngradê jî mezintir e. Balafirên elemanî «Yunkers 52» bi piranî di ser qada şerî re difirin û zad û zexîre tînin eskeran. Hatina wan, cihaba nêxêrê ye, gava çavê leşkerên elemanî bi wan balafiran dikeve, dizanin ko dora wan hatiye girtin, û riya xelasê ne maye, û êdî bitenê balafir dikarin bên ha wara wan.

### Li Gora Hawîr

Û kaniyên selahiyetdar, qiwetên ko îro di destê elemana de ne ev in: 180 û heta 200 firqe der eniya sovyetî, 7 firqe li Finlandyayê, 12 li peravên Norvecistanê; 40 firqe di axa Frensê de, 25 li khergirava talyanî: û 18 di erdên Balkanê de.

## Serdarê Ordiya Sor



Bavê Miletên Sovyetistanê Mareşal STALIN

# QONFERENSA MOSKOVAYÊ

## Qediyaye, Qerarine Hêja Hatine Dayîn

Civanê Moskovayê qediyaye. Vê Qonferansê ji 19-ê çiriya pêşîn û heta 30-î dom kiriye, sala 1943. Wezîrên Brîtanya Mezin, Sovyetistan û Emerîkayê ên dervekariyê M.M. Îdin, Molotov û Kordel Hal 12 civan danîne, û li ser pirsên siyasî û eskerî ên bingehîn, yên îro û sibê, demên şerî û piştî şerî li hev hatine. Li gora qerarên ko hatine dayîn:

1.— Ceng heta wê roja ko têde Dewletên Mihwerê, bê bazar û axaftin, xwe bavêjin bextê Hevalbendan wê dom dike.

2.— Sovyetistan, Emerîka û Brîtanya Mezin, her tiştê ko ji dest tê, bikin da ko ev şerê xedar roj berê rojekê biqede. Li ser vê pirsê di nav bira General û mopîzanên Hevalbendan ên eskerî de mijulahiyine hêja û girane çêbûne.

3.— Elêmanên ko di erdên vegirtî de, zilm li xelkê kirine an ew kuştine dê bêne hikim û ceza kirin.

4.— Du kardarî dê bêne danîn, yek li Londrê a din li Cezayirê. Ya pêşîn bi karên welatên Ewripayê yên ko ji destê dijmina dê bêne xelas kirin û ya paşîn bi pirsên Italyayê mijûl bibin.

5.— Piştî şerî, Ewistirya ji nû ve dê bigehe biserxwebûna xwe. Xelkê Ewistrisyayê divê niho ji bona serbestkirina welatê xwe canfidakariyê bikin.

6.— Piştî şkênandina Mihwerê û serfiraziya Hevalbendan, Kardariyeke Navnijadîn wê bête danîn û ev kardarî bi karê parastina silh û aşitî û rahetî û ewleyiya cihanê û bi hemî pirsên ko pê girêdayî ne mijûl bibe.

7.— Hemî miletên dinyayê, biçûk an mezin, wê bibin xwediyê erd û welatê xwe û têde bê ko ciranên xurt û zorker, têkilî wan bibin an zilm û ta'dan li wan bikin ji bona xweşî û kamiraniya nefs û miletê xwe, û cihan û dinyayê, dê bikarin bixebitin.«Ji xwe tiştê ko miletên bêçare û zilm dîtî dixwazin ev e.»

WEŞINGTON— Meha borî karxaneyên emerîkanî 8.362 balafir çêkirine.

LONDRE— Dervedanên Brîtanya Mezin, di her deh heftan de ji bona şerî milyarek lîreyên ingilîzî ye.

Qewil û Ayîn

## QEWIL

Şêxek rabû ji Xeydayê
Hewar şêxê min,
Berê xwe da bû Serayê
Hewar ruhniya min!...
Koraniya ko bi çavê dayika şêxa didayê
Hewar şêxê min!...
Şêx şehbedîn, şêxê xorta ye
Seyid Elî xudanê heft tekya ye
Şêx Mihemed şîrîn biçûkê bira ye.
Dayika şêxa, bi lezî bile zîne
Eqiba Zêra bi xwe re hilîne,
Bertîlê ji waliyî re bişîne
Teresê qûmandar fermana Serê şêxa dixwîne..
Dor Xeydayê dar û bî ne
Li aliyê heft tekya Hezn û şîn e.
Teresê walî fermana serê Seyid Elî dixwîne
Hewar şêxê min!...
Destê Seyid Elî li kelemçê dişidînê
Berê Seyid Elî dane meşneqê
Seyid Elî li ber meşneqê disekinînê,
Stoyê Seyid Elî, li şerîtê dixînê
Bi emrê Xwedê, şerît di stoyê Seyîd Elî de diqetînê
Cara didiwa kursî li bin lingê wîna de datînê,
şêx Ebdil-Qadir imdadî jê, ji Bexdê dişînê,
Çel ircalê xeybê, li meydanê sekinînê...
Cara sisiya, teresê qûmandar ji hikmê Rebê alemê tirsiya, ji stoyê Seyid Elî, şerîtê bi der dixînê.
Hewar şêxê min!..
Seyid Elî bi destê xwe ji xwe'r Kursî li bin meşneqê datînê
Hewar şêxê min!...
Sê denga dikir qêrênê
Ban ocaxzadan kir go:
Rebê Alemê, hikim dimeşînê, hewar ruhniya min!
Mirada Seyid Elî. li ezmanê hefta de, diqedînê; Seyid Elî bi destê xwe, stoyê xwe di şerîtê de datînê,
Û lingê xwe li kursiyê dixînê. Hewar ruhniya min.
Piştî wefata şêxa. li dinyayê ez ne mînim. Hewar şêxê min.

## ORDIYÊN HEVALBENDAN

### Li eniyên rohalat û roavayî pêş ve diçin

Di Eniya Talyanî de pêşveçûna Ordiya Emerîkanî pênc û a brîtanî heşt bi serdestî dom dike, her çend jî erdê ko têde şer çêdibe gelek asê ye û baranine xurt dibarin, û pê tevdanên eskerî giran dibin. Havalbendan Isernia standiye. Di eniya sovyetî de riya 250.000 eskerên elemanî ko di Qrimê de ne hatiye girtin. Di Dniepra jêrin de qiwetên elemana dikin xwe ji lepê Ordiya Sor xelas bikin û bikevin wê aliyê avê. Ji bona hilweşandina eniya Dnieprê bi timamî; tiştê ko maye standina Kievê ye.

# DEMA NIHA

## KIEV KETIYE

MOSKÛ— Ordiya Sor bi êrîşeke xurt Kiev standiye.

## ZEFERA SOVYETISTANÊ

BI MILYONAN ESKER Û ÇEK JI QIWET KETINE

MOSKÛ — Bi awakî resmî didin zanîn: Ji 5-ê tîrmehê û heta 5 ê çiriya paşîn a 1943 xesarên elemana ev in: Zererine dijwar gihaye 144 fırqeyên peyade û 28 firqeyên zirh û motorkirî. 2.700.000 eskerên elemanî ji qiwet ketine tê de 900.000 kuştî û 98.000 hêsîr hene.

Ordiya Sor 9.900 balafir, 15.400 tang, 890 otomobîlên zirhkirî, 13.000 top, 13.000 qumbereavêjên çeperan, 50.000 mitralyoz, 390 wa gonên Banzîn kêş, 25.000 motosikil. 900 traktor, 13.000 keymyon û otomobîl, 4.000 wagonên trênan, 300 loqomotîv, 2.000 depoxane xira kirine. Leşkerên rûsî standine: 289 balafir, 2.300 tang, 190 otomobîlên zirhkirî, 6.800 top, 6.180 qumbereavêjên çeperan, 24.460 mitralyoz, 7.759.000 gulle, 2.100.000 lexemên teqandinê, 300.000 bombe, 1.506.000 ton torpîlên tangan, 400.000 tifing û otomatîk, 100.000.000 berik û 50 milaon mêtir têl..

# DU HAZAR BALAFIR

## Di Nav 24 Saetên Dawîn de 4.000 Ton Bombe Avêtine Hêjagehên Axa Elemana

LONDRE — Di nav 24 saetên dawîn de refên brîtanî û emerîkanî 1.000 ton bombeyên şewat û teqandinê. Ji tîpên giran û girantir avêtine bajarên Germanistanê. Bombardimana şaristanê elemanî Duseldorf 27 deqîqan dom kiriye û di vê navê du hezar ton bombe li karxane, febrîqe û destgehên vî bajarî ketine.

QAHIRE— Wezîrê Brîtanya Mezin ê dervekariyê Mr. Îdin hatiye payetextê Misrê.

MELBURN— Yekîneyên Hevalbendan ên behrî, heft cengkeştî û 3 barkêşên japonî bin av kirine û di şerên hewayî de 30 balafirên japonî avêtine erdê.

MOSKÛ— Radyoa Moskovayê duhî êvarê digot; Ordiyên Sor mîna brîendeyekê ber bi Xarsonê ve pêş ve dikevin. Tangên rûsî ber bi sûlavên Dnieprê ve dimeşin, û siwarên sor qiwetên elemana yên ji hev belav bûyî diqelînin. Elemana di dora sûlavên Dnieprê de bi kozik û çeperan û bi erdên lexemkirî, ji xwe re asêgehek çêkirine, lê tu tişt nikare pêş ve çûna Ordiya Sor bisekinîne.

LONDRE— Qiwetên brîtanî derketine erdê piştçeperên elemanî, ê axa Italya Bakurî,

MOSKÛ— Çar sed peya hatibûn vexwendin sifra ko mareşal Stalîn ji bona qedergirtina mêvanên xwe Mr. Îdin û Mr. Kordel Hal danî bû. Li ser şifrê ji bîst carî bêtir badîn hatine hilanîn û vexwarin ji bona xweşiya Mr. Çorçîl û Rûzwelt û ji bona serfiraziya Ordiyên pênc û heşt û ya Sor.

LONDRE— Şevêçûyî payetextê brîtanî de îşareta Talûkê hatiye dayîn, lê pir dom ne kiriye. Çend bombe ketine taxeyên Londrê ên dûr.

# ENIYA ROHELÊT

## Rewişa Qiweten Elemanî Hin Bi Hin Zehmetir Dibe

Cengê azakirina axa Ukranyayê ketiye dewra xwe a birinî. Qiwetên rûsî ên mezin, zora xwe didin rêhesina Dniepropetrovskê, rêhesina dawîn ya ko hêj di destê elemana de ye. Heke ev rê jî hatiye birîn, êdî hêvî û xelasiya leşkerên elemanî yên ko di enişka Dnieprê dejne, na mîne, ji xwe îro jî li wê, çûn û hatin ji bona elemana gelek zehmet bûye. Bi vegirtina Verxovtsevoyê Ordiya Sor rêhesina Dniepropetrovsk — Krivoy Rogê biriye. Yekîneyên sovyetî bi lez ber bi Krivo Rogê ve dimeşin, û tête bawer kirin ko ev bajar jî, di nav çend rojan de wê bikeve destê Ûrisan. Di bakurê Kievê de wilo dixuye ko zordana rûsî hinik nermtir bû ye, lê di nîroyê vî şaristanî de Ûris dijminên xwe gelek dişidînin. Ordiya Sor piştî vegirtina Melitopolê wextê xwe winda ne kiriye. Qiwetên General Tolbûxinî dane pey elemana û bernadin ko ev esker bi şûnda çûyînê de çavê xwe vekin û bihna xwe bibin.

Refên rûsî jî, xesarine giran digehînin qiwetên elemanî ên şkêhandî. Niho tête seh kirin ko Melitopolê de zehf şerevaniyên elemanî, bi deh hezaran, hatine kuştin û elemana gelek çek û posatên hêja di cih de hiştine. Lê belê hêj qesda Serdariya sovyetî xweş naye seh kirin. Êrîşa ko di nav bira Kremençûng û Dniepropetrovskê de destpê kiriye gelek mezin e, qesda vê êrîşê gelo neqeb kirina xetên elemana ye an bitenê bi şûnda zivirandina qiwetên elemanî?

Niho sê ordiyên elemanî, hemî bi hev re 50 fîrqe ketine tengiyê.

Lêbelê eleman bi çavsorî û hinerwerî şer dikin û gava hewce dibe dest ji canfidakariyê na kişînin, û heta niha zehf caran xwe ji tengasiyê, û ji rewişên giran xelas kirine. Ji aliyê din wilo dixuye ko elemana di Ukranya Roavayî de ji xwe re rêkê otomobîla a reh «Otostrad» çêkirine û ev rê niho, bi şûnda kişandina qiwetan û anîna gaziyan de bikêr tên.

Cihan li Sovyetistanê dinêre ya Stalîngradê hêj mezintir, bi ser Di Ukranyayê de dikarê bela elemana de bê.

Ji aliyê din sê wezîrên dervekariyê. MM. Îdin, Molotov û Kordel Hal di Moskovayê de hero bi hev re sê çar saetên dixebitin.

Her çend jî xebata vî civanî veşartiye, nas e ko her sê wezîr bi dilekî pak, bi dostaniyeke paqij û bi vêneke xurt tevkariyê dikin û karê xwe pêş ve dajon, ji xwe ji bona îro jî ev hes e,

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

# ÇEKOSLOVAKYA

## Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî

Xelkê Çekoslovakyayê pêncsed sal di bin hikmê miletên biyanî de mane, azahî û serbestiya xwe winda kirine, di bin zilm û zorkeriya neyaran de bê tab û tîwan ketine, lê dest ji xebatê bernedane, agirê dilê wan ne vemiriye, ber ekis eşq û hevîniya welat di dilê wan de maye û xurtir bûye û sala 1918-an de, piştî şerê mezin î kevin, bûne xwedî dewlet û hikûmet. aza û serbest.

Lêbelê, sernivîşta wan a reş wilo xwest, piştî bîst û pênc salên azahî û serbestiyê, berî pênc salan ji nû ve ketin bin destê dijmina, hikûmeta Çekoslovakî hatiye rakirin, rojnama û kovar, medrese û dibistanên wan hatine girtin. Di pêşiya vî tiştî de miletê Çekoslovak çi kir; sûret û wêneyên jêrîn pêş me dikin.



Keç û dot û jin bi hezaran çûne Sovyetistanê û tenişta eskerên rûsî de şerê neyarên welatê xwe dikin.



Pîr û civan ketine eskeriyê. Serdarê Çekoslovakî General Ingrsilav li eskerên Çekoslovakyayê dike.



Bergehek ji yên payetextê Çekoslovakyayê Prag. Ev sûret bi şev hatiye girtin, gasingeha St. Venseslasî û şehreyên dora vê Gasingehê şanî me dide.

LONDRE— Meha borî refên emerîkanî 4.690 ton bombe avêtine hêjagehên elemana û 784 balafirên elemanî xistine erdê.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

1ère ANNEE — LUNDI 8 NOVEMBRE 1943 — NUMERO 27

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Légère avance des armées alliées en Italie où Américains et Britanniques doivent surtout surmonter les difficultés inhérentes au terrain et aux conditions atmosphériques,

Complète déroute des armées allemandes dans les steppes de Nogaisk.

La Crimée est complètement isolée.

Les forces soviétiques franchissent le Dniepr en plusieurs points sur son cours inférieur.

Les unités de la Wehrmacht tenant encore dans la région de Krivoi-Rog sont à la veille d'être encerclées et anéanties.

Des patrouilles de l'Armée Rouge tâtent les positions ennemies dans le secteur au nord de Gomel, sur la partie centrale du front.

Telle est la situation générale en ce jour d'anniversaire de l'URSS — du 7 Novembre, et voici en quels termes Moscou commente les évènements:

Il y un an, les Allemands tentaient en vain de franchir la Volga. En Octobre 1943, ces mêmes Allemands ont tenté en vain d'empêcher les Russes de franchir le Dniepr.

Les douze mois qui viennent de s'écouler peuvent être géographiquement encadrés dans l'espace d'environ mille kilomètres situés entre ces deux fleuves. C'est ici que se sont déroulés les évènements militaires les plus importants de l'année. Toute cette étendue de plus de mille kilomètres est jonchée de cadavres allemands.

Pendant toute une année. la Wehrmacht a reculé sans cesse, sans parvenir à s'arrêter sur l'un ou l'autre des nombreux obstacles fluviaux: le Don, le Donetz, la Soj, la Desna, le Dniepr.

Ce n'est plus la même armée allemande qui se ruait alors à l'assaut de la Volga, qui de Mozdok cherchait à atteindre Grozny et Bakou et dont un détachement de troupes spéciales escaladait l'Elbrouz, dans le Caucase, pour planter au plus haut des monts un drapeau à croix gammée.

Rien ne semblait alors impossible aux Allemands, persuadés de l'invincibilité de leurs forces. Aujourd'hui, la Wehmacht est affaiblie, saignée à blanc. L'Armée Rouge par contre est plus forte, mieux entrainée, — mieux armée. C'est à Stalingrad qu'a pris fin l'année de victoires allemandes. Aujourd'hui, les troupes de Hitler se battent encore avec la rage du désespoir, mais sans enthousiasme et sans foi.

La propagande nazie pour calmer l'inquiétude de son peuple et de ses satellites a d'abord inventé la théorie de la «défense élastique». Puis, le Haut Commandement de la Wehrmacht a mis tout son espoir en d'autres arguments, météréologiques ceux-là: mais ni la pluie' ni la boue, ni l'allongement des lignes de ravitaillement n'ont freiné la —marche irresistible des détachements cosaques aussitôt suivis par des colonnes de tanks légers.

La propagande allemande pouvait encore duper son peuple en 1942, mais 1943 a dissipé bien des illusions: la Wehrmacht n'a plus enregistré le moindre succès après Stalingrad: elle n'a fait que reculer depuis, et dégringoler de plus en plus bas.

A Kharkov et à Orel, à Stalino et à Taganrog, à Smolensk et à Briansk, à Tchernigov et à Poltava, partout les Allemands ont tenté de s'arrêter; ils se sont accrochés désespérément à ces villes, mais l'Armée Rouge les en a délogés de l'une après l'autre.

Et dans leur retraite, les Allemands abandonnent villes, fortifica. tions, armes, munitions, vivres et souvent leurs blessés.

La machine de guerre nazie tient encore, il est vrai, mais elle craque déjà et se disloque. Et ce qui craque et s'effrite plus encore que le front c'est le moral du peuple allemand.

L'Allemagne est en pleurs; elle gémit. On commence à murmurer et même à proférer des menaces à l'encontre du Fushrer qui a si mal conduit son peuple de seigneurs vers la victoire promise.

En URSS par contre, le moral est plus élevé que jamais. La production du pays augmente dejour en jour On reconstruit et on laboure jusque sur les arrières immédiats de la ligne du front. La reconstruction des villes et des villages fait des progrès rapides.

L'Etat Soviétique a 25 ans. 25 années de victoires de toutes sortes. Les coups que l'Armée Rouge a portés à la Wehrmacht ont étonné le monde. Le bloc hitlérien se décompose. L'exemple de l'Italie inquiète la Roumanie et la Hongrie.

Il y a un an, le Maréchal Staline disait:

« Le jour viendra où ce sera à notre tour de célèbrer des victoires»

Aujourd'hui, Moscou salue par des salves d'artillerie les victoires de ses héros. Le jour approche où la capitale de l'URSS annoncera au monde la victoire finale.

### 2e ARTICLE D'INITATION SUR LES CHARS DE COMBAT

## "CHARS DE COMBAT" ou "TANKS" MODERNES




*Les tanks actuellement en service dans 65 differentes armées appartiennent à de nombreux types plus ou moins lourds, rapides et armés, mais tous ont les mêmes caractéristique essentielles: leur armement principal, un canon, est installé dans une tourelle qui peut tourner sur elle-même grâce à un moteur; le ou les moteurs actionnant les chenilles sont placés à l'arrière du „caisson" blindé qui constitue le char; le conducteur est installé le plus haut possible à l'avant pour avoir les meilleures vues. Dans presque tous les chars modernes moyens ou lourds, la tourelle entraine dans sa rotation une sorte de cuve dans laquelle se trouvent le chef de char et les servants du canon.*

*Le premier char répondant à la plupart de ces caractéristiques a été le petit char français RENAULT essayé en Juin-1917. Le RENAULT F. T. ne pesait que 6 tonnes, et n'était ni fortement blindé, ni rapide, mais son canon de 37 m..m, précisément placé pour la première fois, sous tourelle, pouvait tirer dans toutes les directions et se montrait très efficace contre les mitrailleuses qui jusqu'au milieu de la dernière guerre, avaient infligé de grosses pertes à l'infanterie, bloquant la plupart de ses attaques.*

*Le véritable prototype du tank moderne, de dimensions et d'armement correspondant à ceux des meilleurs actuellement en service, à été le IA-F. C.M., char français également, essayé en fin d'année 1917, Le IA-F.C.M, pesant 41 tonnes, et long de plus de 8 mètres, portait sous tourelle, un canon de 105 m..m lançant des obus d'une quinzaine de kilos. Ce char pouvait franchir des fossés larges de 3m, 50 et des murs hauts de près d'un mètre. Il ne dépassait pas toutefois la vitesse de 6 kilomètres à l'heure, celle d'un homme au pas.*

*Actuellement, les tanks peuvent être classés en catégories par leur poids: tanks „légers" pesant de 13 à 15 tonnes, „moyens" de 26 à 30, „lourds", d'une quarantaine de tonnes, „très lourds" enfin, atteignant et dépassant 60 tonnes.*

*Dans la première catégorie, les tanks américains M-3 ou „General Stuart" et surtout M-5, plus récent, sont remarquables. Ils dépassent largement la vitesse de 50 kilomètres à l'heure, sont extrêmemant maniables, et bien armés pour leur poids d'un canon de 37 m..m long et de plusieurs mitrailleuses.*

*Dans les chars „moyens", aptes à toutes les missions, les meilleurs sont le T-34 russe, de 26 tonnes, et le M-4 ou Sherman américain, de 30 tonnes tout chargé.*

*Le T-34, protégé par des plaques de blindage de 45 à 70 m..m d'épaisseur, atteint cependant le 50 à l'heure, grâce à un moteur de 500 cv et peut parcourir sur bon terrain plus de 400 kilomètres sans ravitaillement. Il porte sous tourelle un canon long de 3 pouces (ou 76 m..m 2) extrêmement puissant.*

*Le Sherman, de même longueur, environ 6 mètres, mais un peu plus haut: 2m 80 environ au lieu de 2m 45, offre plus de place à l'équipage. Malgré un moteur de 500 cv également, il est un peu moins rapide. Son armement consiste en un canon de 75 m.,m sous tourelle et en plusieurs mitrailleuses. L'une de celles-ci, de gros calibre, peut tirer contre avion.*

*Les canons qui arment ces chars lancent à une très grande vitesse des obus de 6 kilos environ qui peuvent traverser de forts blindages:*

*Les tanks lourds „CHURCHILL" anglais, de 40 tonnes, et „KLIM-VOROCHILOV", russe, de 41 tonnes, sont très fortement blindés. Il sont ainsi moins rapides que les précédents, environ 35 kilomètres à l'heure.*

(à suivre)

Strana Kurdî

# XERABO...

Xerabo.,. Xerabo
Tu bi xalxal û bi gotinê çênabo
Malê te pirê ji canê te re edabo
Qama te kin e
Hemberî taximê memkê mi nabo
Şevê kanûna dirêj in
Tu ji ber serê min ranabo,
Tu bi şêxê qureyşiya bî
Sed werdê tê di bêrîka mi de be
Qenyatiya dilê min bi te na bo.

Ez û Xerabê bitêne
Şevê nîvê şeva
Li binya mala li hev rûniştin,
Me giliyê xwe pev kirin
Gazinê xwe dihiştin.
Dar û dewiyê çola
Ji gilî û gazinê min û xelkê delal
Dibiriştin.
Kundê şikêra, wawikê ber devê
çema
Ji gilî û gazinê min û bejna zirav
diponiştin.
Miriyê gorê merzela
È ko îsal hezar sal mirî bûn
Ji gilî û gazînê min û bejna zirav
Ji qebrê reş î tarî derketin
Kefenê xwe li cemcumê
serê xwe gerandin
û li ser qebrê xwe rûniştin.

Keçikê ban dikirê lawiko
Ez bi te re dost bûm
Tu bi mi re dijmin derketî
Te derbek bi tifingê berda min
Ez dikuştim.
Te şevê nîvê şeva û pê ve
Bi destê jina xwe girtî
Te li ber dîwara ez dihiştim.

Go Xerabo... Xerabo
Havîn e, xweş havîn e
Nanê cehîn e, dewî tirşîn e
Ser rax û bin raxa min û
bejna zirav;
Ebake şalî ne
Heçî derdê dila ne dî be
Bela ne bîne.

Xerabo... dîno...
Mi bihîstî tu zewicî
Û te yek xwestî
Ezê tu nifira li te nakim
Tu dûrî dest î
Xwedê teala bike, rehî
Goştê canê te bihele
Li hewa bimîne, komik hestî.
Taliya paşî, bila tu kwîr bibe
Têkevî ber vî destî,
Xerabo dîno bila li te be
Li wî dilî
Li mala bavê te bî
Li wî sewdayî, li wî aqilî,
Çawa te dev ji min kara xezala
berda
Tu î li bergîla serê tewla
Hesilî.
Kul û kederê te giran in
Tu car dernakevin ji vî dilî,
Terka bejna zirav nakim
Heya axa merzela
Kêlê di kevirê.

Keçikê ban dikirî lawiko
Serê memkê min xatûnê
Mîna tiriyê Çêlikê Eliyê Remo
Di çax û benga xwe de digihiya
Û di mêwa xwe de dikemilî,
Mîna qesrê pirota
·erê mihela meşkîna
Li bajarê Mêrdînê a vekirî.

# TACDIN

Dilê min dilkî li dîn e
Bela xwedê topekê li mala Izedîn
xîne;
Şêwir û mişawirê giran, li Çola
Hesarê danîne.
Ban li melê kirinê, dibêjin qelem
û dewêtkê xwe bîne,
Kaxetkê emê ji mala Tacdînê mala
Hecî Osman re bişînin.
Gava vê kaxetê, digihîne destê
Tacdînî, Tacdîn li vê kaxezê
dimeyizînê...
Banî Elîkê Heseyn kiriyî, ma'qûlê
Pêrparê...
Dibêje çend peyan, ji gundê Pêr-
parê bi xwe re hiline, me bihistiye
Izedînê Mala Temo, û Xelîlê
Betê,bi koma giran ve,bi fereca sibeyê
wê bavê ser gundê qirqatê, ser
Qesra mala Usê Şehîn.
Dilê min, dilkî li dîn e
Tacdîn û Elîkê Hiseyin, bi çend
peyan, rêka Qirqatê digirin û
dilezînin...
Xwedê teala, xira bike, mala
Izedînî, bi sê kemîna, li dora Silo
Hemzo, li xirbê Kinyasê rûniştîne.
Şade û şihûdê Tacdîn gelek hene,
go: her sê kemîna dişkênînin û
bi ser gundê Qirqatê diqulpînin..
Dilê min li hêra... Sed car li hêra..
Şade û şihûdê Tacdîn hene, da
xencerê u ket kozka diyêr e, û bi
sê denga ban kir Izedinê go: dilê
min dilkî li dîn e, qerara Xwedê li
nefsa canê min keti be, dilê min
li hêra, ezê li ber vê kozikê rakim
kerxa mêra. Izedin banî kirê; go:
dilê min dilkî li dîn e, hege nîşana
êvarê winda bibe, ezê bi çîmê te
bigirim û ji wê kozikê bikişînim
Wî lê wegerad û got: xalxalê xwe
û zêdî bavê xwe me bêje, go: gelek
carî, te derbê mi, bi çavê serê
xwe dîne.

Izedîn banî Tacdîn kirê û got: qerara
Xwedê bi nefsa canê min keti be,
ezê te neha bikişînim ji wê kozikê.
Izedîn ban racniya, mihacniya
kir û koma giran û go: hemî pakêtê
li tifinga xînin û hicûmê ser bikin!
Tacdîn bi sê denga ban Xelîlê Horê
kir, go: dilê min dilkî li dîn e, şahid
û şihûdê xalê te Tacdîn gelek hene
û Xelîlê Horê lê vegerand go:Tacdîno
Xalo, dilê min li dîn e; tirsa min
derbkê li te xînin, wê sinfikê mala
Hesen Şemdîn, ji dinyayê biqelînin
rokê rev çêtir e, ji desthilanînê.

Tacdîn li xwarziyê xwe Xelîlê
Horê vegerand û got: tu çava revê
li xalê xwe qeyas dikî...
Dilê min li dîn e... ez vê kozikê tu
carî ber neyara bernadim,bê xwîn e

Bi sê êrîşa êrîş kirin bi ser
Tacdin e, derb û berek lê dane,
li bejn û bala Tacdîn, laşê
wî ket, li kozikê bi birîn e.
Izedînê mala Temo go:
ez bala xwe didimê, ne ma tê
hisa Tacdînê,—....

Nûriyê Lewand bi sê denga ban
kir Xelîlê Horê; go: vê bihnê;
xalê te serê xwe daniye razayê.
Xelîlê Horê bi sê denga ban kir
Nûriyê Lewend; go ez ne ma zanim,
xalê min ya kuştiye, ya birîn e.
Nûriyê Lewend pakêtê li
tifingê dixînê û xwe li koma giran
diqelipînê, pênc peya li hêla bezê
dikuje. Heyfa min tê li ser Tacdinê,
laşê wî li kozikê, li hêla neyaran
dimînê. XELÎLÊ METÎNÎ

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## CENG & BIHINGEH



Tang Bi Hezaran Ji Karxaneyan Derdikevin û Berê Xwe Didin Eniyên Cengî. Mîna Sala 1918-an Tang Zora Elemana Dibe.



TANGEKE FRENSIZÎ P..Ş VE DIÇE

LONDRE— Leşkerên Yugoslavî ketine Mecaristanê û têde şerê neyaran dikin.

RIO DE JANEIRO — Bi awakî resmî didin zanîn: balafireke brêzîlî ji nişka ve bi ser noqaveke dijmin de girtiye û ew bin av kiriye.

LONDRE— Komîte brîtanî a arîkariya Ordiya Sor, ya ko dibin sermiyaniya Sitiya Çorçil de ye 4.00.000 (çar milyon) lîreyên ingilîzî kom kirine, piraniya mirovên ko ev pere dane xebatker in.

MOSKÛ— Hikûmeta Sovyetistanê ji 118 mêrxasan re payeya Egîdiên Sovyetistanê dane, di nav wan de esker serbend û 3 general hene. Ev egîdên he hemî, di şerên Dnieprê de mêrxasiya xwe şanî neyaran dane.

LONDRE— Qerargeha leşkerên Kenadî a mezin li Londrê e-lam'dide ko ji panzde serbend û şerevaniyên Kenadî re nîşanî frensizî a mezin Croix de Guerre hatiye dayîn.

LONDRE— Wilo dixuye ko serekên ıtalyanî ên lîberal û de mokrat mîna kont Sforza û Krose na xwazin di bin emrê Kralê Italyayê Viqtor Emanuel de, xidmeta welatê xwe û arîkariya hikûmeta Badogliyoyê bikin. Text û Tacberdana Kralê Italyayê bi awakî zor-nîveyê aşaftineyê.

Sal 1 — Hejmar 28

# ROJA NÛ

Duşemb 15 Çiriya Paşîn 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

CENG & SIYASET

## DEWRAN

### SERSALA MEZIN

6. ÇIRIYA PAŞÎN 1917

Sersala cejna danîna Hikûmeta Sovyetistanê a bîst û şeşemîn bû, sersala wê roja ko pale, û cotkar û xebatkerên Rûsyayê, li Hikûmeta xwe rabûne û ev hikûmet û sermiyanê di wê Çar rakirine. Di erdê Ûrisa de, berî Îdara Sovyetî, beg û axa gundê xwe tevî xelkên têde dikarî bûn bifiroşin, mîna pez û dewaran. Mezinên Rûsyayê bala xwe ne didan xelkê xwe, ji bona pêşveçûna wan ne dixebitîn, azahî û serbestî li Rûsyayê kêm bû. Bê qerara mehkeman xelk dihatin girtin û avêtin zêndana, an ew dişiyandin Sîberyayê, û li wê zilm li wan dikirin, ew diêşandin. Li Rûsyayê, di wê wextê de jî, bajarên mezin û çeleng, peyayên hêja û xwenda, dewlemend û bikêrhatî hebûn. Lêbelê milet, pale, xebatker û cotkar perîşan bûn, ango piraniya xelkê, jar û feqîr, belengaz û nezan bûn. Mezinên Welêt heqê xelkê dişkênandin, û malê wan dixwarin.

### Di vê Perîşaniyê de,

Du mirovên mezin Lenîn û Stalîn ji nav xelkê derketin û ketin pêşiya miletê xwe û ala azahî û serbestiya milet bilind kirin.

Tiştê ko Lenîn û Stalîn û destbrayên wan bi tevkariya milet pêk anîne, vî şerî şanî Cihanê kiriye. Di Rûsyayê de, ji Ûrisan pê ve zehf milet hene. Di wextê Îdara Çarên Rûsyayê de, miletê Ûris û miletên din nikarî bûn çavê xwe vekin; ne maze heçî kurên pale, gundî, cotkar û şivan û xebatkeran, nikarî bûn bikevin dibistanan, bixwînin; zana bibin, û bikêrî nefsa xwe û miletê xwe bên.

### Idara Sovyetî Berî Her Tiştî

Heqê hemî miletên ko di Sovyetistanê de ne, nas kir. Ji wan re serbestî da, ji bona wan dibistan û medrese vekirin.

Di Sovyetistanê de 160 hezar kurd jî hene. Di gundên wan de medrese û dibistanên kurdî hene û zaroyên kurd, di wan medresan de bi kurdî dixwînin. Ji bona wan rojname, kovar û zehf kitêbên kurdî hatine û têne çap kirin.

### Idara Sovyetistane

Asasek daniye. Yê ko dixebite —û ji xwe her kes divê bixebite— divê mîna însana vexwe û bixwe, cilên paqij li xwe bike, maleke paqij de rûne; û heçî hêja ne bavê wan şivan bin gawan bin, kurê xulam u cotkara an beg û şêx û axan bin, divê bikarin bigehin me zinahiyê, bigehin payeyên bilind û heke bikêrhatî ne, divê bibin walî û qomandar, general û wezîr.

### Qîmet û Hêja Bûna

Mirova ne, bi navê beg û paşatî, û şêxîtiyê ye, hêja bûna mirovan li gora zanîn xebat û mêrxasî û ciwanmêriyê ye. Heke navê mirovekî mezin e, divê bizane ko ev nav jê re barek e, Bitenê mirovên xurt û xebatker barê navekî mezin dikarin hilgirin. Xidmeta navekî mezin, derd û xebateke giran e.

Dergehên xebat, zanîn û mezinahiyê di pêşiya her kesî de vekiriye. Yê ko dixwaze bibe tiştek bila dest bi xebatê bike.

Tiştê ko tu dixwazî divê tu bixwe, bi destê xwe, pêk bînî; dewlet di xebata te de arîkarê te ye; te dihemîne, nav di te dide, û serfiraziya te dixwaze. Lê yên ko bi xebata xelkên din dixwazin bijîn sefa û tolaziyê bikin, pişta xwe xurt bikin, divê bizanin ko mirin û perîşanî di pêşiya wan de ye.

Ev e Sovyetistan!!...

## STOLA FRENSIZI

### Iro Jî Stoleke Xurt e, Stoleke Xwedîqudret e

LONDRE—Îro di destê frensiza de 300.000 ton mezin cengkeştî hene. Stola frensizî ji 5 zirehpîş, 9 qriwazorên giran, balafirhilgirek, 9 qriwazorên sivik, 2 qriwazorên arîkar, 14 bertorpiyor, 20 noqav, 5 torpiyor û 100 cengkeştiyên sivik bihevketî ye. Cengkeştiyên frensizî yên ko di distgehan de têne selihandin ne têde ne.

Di destê talyana de 5 zirehpûş, 8 qriwazorên sivik, 7 bertorpiyor û 40 noqav hene. Di nav salekê de 22.500.000 ton mezin wapor ketine benderên Efriqa Bakurî a frensizî. Noqavên hevalbendan li vê salê 430.000 ton waporên Mihverê bin av kirine û xesar gihandine 700.000 tonên din. Waporên Hevalbendan ên rûyê behrê 27 wapor, hemî bi hev re 60.000 ton mezin xeriqandine, jê pê ve bi derbên Stola Hevalbendan 8 bertorpiyor, 2 torpiyor û gelek yekineyên din ên siwik xeriqîne.

## Italya- Dergehê Ewripayê




Axa ko têde Ordiya heşt û pênc zora elemana dibe.

## ORDIYÊN BRITANI & EMERIKANI

### DI ENIYA TALYANÎ DE ELEMANA PAŞ VE DIZIVIRÎNIN

CEZAYIR—Ordiyên Hevalbendan piştî vegirtina San Ciovano, Paglieta, Sangro û Triventoyê û gelek bajar û avahîgehên din ji nû ve pêş ve diçin. Eleman beriya ko xwe bişûnda bikişînin her tiştê ko destê wan digehe xira dikin. Rê û pirên xira bûyî, gelî û çiyayên asê û nexweşiya hewayê tevdanên eskerî giran dikin.

Refên Hevalbendan li bajarê talyanî Turin û di axa ernewîdan de li bendera Durazyoyê xistine. Çekê britanî û emerîkanî ê hewayî di eniyên şerî de zererine dijwar digihînin şargeh, çeper, rê, rêhesin, qefle û komeskerên elamana.

LONDRE—Serekwezir Mr. Çorçil di Londrê de peyiviye û gotiye: Ev salek e, Ordiyên me û yên Hevalbendan di hemî eniyan de serfiaz in. Qiqetên me û emerîkanî Sicilye, Serdinye û perçeke erdê talyanî a mezin standine. Me pişta noqavên elemanî şkênandine. Ev noqavên he ji bona selametiya riyên behrê talukeke mezin bûn. Emê sala ko bê bi derbên hêj girantir zora dijmina bibin. Ez gelek şa dibim ko yekîtiya frensiza çêbûye û Ordiyên frensizî xwe pêk anîne û wextekî nîzing de dest bi serbestkirina axa Frensê bikin.

## DERBINE DIJWAR

### ORDIYÊN ELEMANA XISTINE TENGI & BÊNIYAZIYÊ

MOSKÛ—Dîwana Sovyetî a nûçeyên şerî elam dide: di şerê Kievê de, ji 3-ê mehê û heta li şeşan leşkerên me yên eniya Ukranyayê firqeyên elemanî 68, 75, 82, 88, 188, 217, 327 û 340 şkênandine. Firqeyên elemanî ên zirhkirî 7, 8 û 20 jî di pêşiya derb û agirên me de perîşan bûne. Jê pê ve di şerê Kievê de 9 firqeyên elemanî ên peyade û 2 firqeyên zirhkirî û firqeyeke motorkirî şerpeze bûne. 15.000-kuştiyên dijmina li erdê mane. Di wan qomandan de, qiwetên sovyetî 244 tang, 216 balafir , 174 top,158 qumbereavêjên çeperan; 246 mitralyoz û 28 depoxaneyên zad û zexîran û çek û posatên şerî ên din xira kirine û 30 balafir, 42 tang, 314 top, 640 mitralyoz, 660 otomobîl, 700 firgonên dagirtî, 2.000 hesp, 18 weşînekên radyoyê 39 depoxane standine û 6.200 hêsîr girtine.

### SERMIYANÊ FRENSIZA



GENERAL DE GOL

## Komîta Frensizî

LONDRE— Duhî Radyoa Cezayirê danezana jêrîn belav kiriye: Komîte Frensizî bi awakî jêrîn hatiye danîn:Serek: General De Gol; Komîserên Dewletê: General Katrû, Andre Filip û M. Henrî Kuîl. Komîserê dervekariyê M Renê Masiglî, yê hindurkariyê M. Emanuel d'Astiye, yê kewne û mehkeman M. Fransua Manton yê şer û qiwetên hewayî M. Andre Troke, yê qiwetên behrî M. Luî Jafino, yê erdên Kişwerê M. Rene Plevan, yê Maldariyê M. Mendes Franse, yê Nûçeyan M. Hanrî Bone, yê çûn û hatin û waporên barkêş M. Rene Mayer, yê hêsîr û mihaciran M. Henrî Trenep, yê karên civakî M. Andre Tiksiyê, yê zanîn û dibistanan M, Rene Kapîtan, yê Jiyîn û bi xwedî kirinê M. Andre Dîthelm.

CEZAYIR— Li gora qerara ko hatiye dayîn sermiyanê komîta frensizî a xelasiya welêt bitêne General De Gol e, General Jîro bi karên serfermondariya Ordiyên frensizî mijûl bibe.

## GIRAVA SAMOSÊ

QAHIRE— Girava Samosê, li bîst û şeşê meha borî hatiye vegirtin û eskerên Yewnanî yên erdên Rohelatê Navîn niho di vê giravê de li hev civiyane.

## DANEZAN

LONDRE— Emîraliya Brîtanî dide zanîn: noqavên brîtanî di behra Spî û a giravan de xwe zehf tevdane, 7 waporên dijmina xeriqandine û xesarine dijwar gihandine 9 hebên din; hêvî mezin e ko ji wan wapora jî 3 heb bin av bûne,

CEZAYIR— Civatmiletê frensizî îro civanê xwe ê diwemîn daniye.

NÛ-YORK—Meha borî destgehên emerîkanî 163 wapor çêkirine, hemî bi hev re 1.675.000 ton mezin. Heta îro ji wan destgehan 15.500.000 ton mezin gemî derketine û ketine behrê.

ZURIX— Şevêçûyî di Jenevê de işareta talukê hatiye dayin.

# DEMA NIHA

## JITOMIR KETIYE

### Ordiya Sor Gehîneka Jitomirê Standiye

MOSKÛ— Serfermandariya Sovyetî dide zanîn: lekên Ordiya sor zora elemana biriye û ketiye bajarê Jitomirê.

LONDRE—Di erdê elemana de 40 bajarên mezin yên têr destgeh û febrîqan hene, bi bombardimanên refên brîtanî û emerîkanî 17 hebên wan yekcar xira bûne û xesarine dijwar gihaye şaristanên mayîn.

WEŞINGTON— Wezîrê emerîkanî ê şerî Mr. Stîmson duhî di civanê rojnamevanan de gotiye:: Di eniya behra Spî de îsal 3.058 balafirên elemanî hatine anîn xwar û 750 hebên din, derbine hinde giran xwarine ko, hisêb ew jî ketine û xira bûne. Refên Hevalbendan li erdê jî 2.453 mekîneyên elemanî pelixandine, xesarên Emerîka—Brîtanî 1.545 balafir in.

## PÊJINEN CIVANÊ MOSKOVAYÊ

### Nivîsarên Rojnameyên Payetextê Brîtanî

LONDRE— Rojnameyên ingilîzî bi civanê wezîrê Brîtanya Mezin ê dervekariyê Mr. Îdin û yê tirkyayê M. Menemencioxlû mijûl dibin û li ser rastîhevhatina her du mirovdewletan bendine girane dinivîsînin. Rojnama payetextê brîtanî a mezin «Teymis» dibêje: Niho her du wezîrên dervekariyê bi planên Ewripayê ên mezin ko di qonferansa Moskovayê de asasên wan hatine danîn mijûl dibin û li wan bingehan hûr û kûr dinêrîn.

Niyûz Kronikil dinivîse: Tirkiya nikare rûyê xwe ji planên nû ko ji bona tevger û danîna silh û aştiya Ewripa û Dinyayê û ne maze yên Balkana biguhêre. Lêbelê giraniya para Tirkiyayê di civanê silhê de li gora xeyreta ko ewê, ji bona lezandina dema silh û aştiyê bike, wê bikeve tasa şihîne. Heye ko li gora texmînên Tirkiyayê, ji hêla parastina erdê xwe, ew nikare dev ji bêterefiya xwe berde û di teniştа Hevalbendan de bikeve şerî. Lê hin tişt hene ko Tirkiya dikare bike û hêvî heye ko pê elemana hevqas nayîn enitandin û eleman jê hisaba bikin ko bêterefiya tirkiyayê dikare hêj bikêrî wan bê; û di wî warî de rewişa Tirkiyayê mîna a Portixalê ye.

«Deylî Herald» dibêje: Tu car ne hatiye xwestin, tirk tiştekî welê bikin ko eleman bi vê hêncetê dikarin li wan xin. Lê îro eleman tengiyê de ne û ko ew êrîşa tirkiyayê bikin dûrî eqla ye. Îro pirs ev e: divê bête seh kirin gelo tirk bê ko xwe bavêjin talukê, heke nikarin hêj bêtir arîkariya Hevalbenda bikin. Tirkiya dikare dan û standina xwe a siyasî ji elemana bibire û war û balafirgehên xwe bide Hevalbendan, an di pêşiya elemana de li warê paşrojmendiyê hêj destgirtîtir bibe; zad û dexil û tiştine din meşîne elemana; mîna pembû û hirî.

**Qewil û Ayîn**

## QEWILÊ XEZALÊ

Xwedî zaro xwedî tifalê
Evê xezalê çi kiriye
ji xwe re cadak dîyê
Nav bexeçeyê zilamê cihû...
Ev zilamê cihû
Çi kiriye? Ev xezal
Çû nav bexçê, zilamê cuhîyê
Serê gul û beybûna peçandiyê.
Evî zilamê cihû çu xefik
ji mal aniyê
Bi rêka vê xezalê, vê heywanê
daniyê
Nerî ko xezal ketiyê
Xefka zilamê cuhiyê
Darek anî bi xezalê ketiyê.
Carcara vê xezalê di nav
destê zilamê cuhiyê
Li erşê jorî hikim kiriyê.
Yekî weke Mihemed Mistefa
Xwe lê beyan kiriyê
go: heqê te li wê heywanê tuniyê
Xwedî zaro, xwedî çêlîyê.
Bila here bidî wan
Şîrê berê sipîyê.
go: vê heywanê bexçê min
xira kiriyê
Ez ber na dim bi xêr û
bi xweşiyê.....
Mihemed ban kir zilamê cuhiyê:
Ezê şûna vê heywanê rûnim
kefîltiyê
Heta here bide zaroka, şîrê
berê sipiyê....
Evê heywanê, ji nav destê
Zilamê cuhû derketiyê
Mihemed li şûna wê rûnişt
kefîltiyê
Ewê heywanê xwe hilaniyê
gihaye ser zaroyê xwe
go: lawo bixwin şîrê berê
sipiyê
Yekî wek Mihemed Mistefa
Li şûna min rûniştiye, kefîltiyê.
Zaroa ban kir.. lê yadê!...
Em naxwin şîrê berê sipiyê
Heta tu Mihemed Mistefa
ber nedî ji kefîltiyê.
Xezalê delalê; xwedî zaro
Xwedî tifalê!
Miadê zilamê cihû qediyayê
Hat ser Mihemed Mistefayê
go; nêbeyna min û te
çar deqîqe mayê!
Zilamê cihû çû riya xezalê...
Li şopa xezalê erxek kolayê
Ev erx nixumand, kursek
gihayê şîn li ser dayê..,
xezal gihaye erxê, go:
Vaye kursek giyayê şîn
Xwedê ji mi re dayê
Ezê bixwim, ezê herim berdim
Mihemed Mistefayê.....
gava ko çû ser gihayê şîn
Ketê erxê, di erxê de mayê...
Zilamê cuhî hatê ser erxê
Nêrî ko xezal di erxê de
mayê..
Du nihît bi ser de berdayê
Pişta vê heywanê şkênandayê...
Hat cem Mihemed Mistefa
go: mîadê min û te qediyayê
Du deqîqe di nêvbeyna min
û te de mayê!..,
Kefîltiya te qediyayê!..
Mihemed Mistefa çi kiriyê
Ban zilamê cuhû kiriyê
ji xwe re du qam sinet kiriyê
Pişta vê heywanê bi emrê Xwedê
Çêbûyê !..
Li ber Mihemed Mistaefa sekinîyê...
Evê heywanê çi kiriyê
Yek weke Mihemed Mistefa
Berda ji kefîltiyê.,...
Cuhû ban kir Mihemed
Mi pişta wê heywanê şkênandiyê
Bi çi hawê rehet bûyê
Mihemed ban kir zilamê cuhiyê
ya kafir mi j'xwe re dia
kiriyê!...
Rahet bû bi emrê îlahiyê.
Zilamê cihû li ser destê
Mihemed misilman bûyê

# MIREKA CIHANÊ

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

### Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî




Ji Bergehên Erdê Italyayê: Ber Bi Mesinayê Ve



Balafira Ko Ji Bona General De Gol Hatiye Çêkirin.



Eskerên Frensizî Di Beriyeya Lîbyayê De.

1ère ANNEE LUNDI 15 NOVEMBRE 1943 NUMERO 26

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Sur le front de l'est, les Russes progressent rapidement à l'ouest du DNIEPR et ils ont pris JITOMIR KOROSTEN et BERDICHEV.

Une nouvelle offensive soviétique semble être esquissée sur le front central, au sud de RIECHITZA.

En Italie, des détachements britanniques ont franchi laSANGRO et enfoncé un coin dans les positions allemandes dans le secteur central du front, à une quinzaine de kms au delà d'ISERNIA.

Mais la semaine qui vient de s'écouler a surtout été marquée par de nombreux discours prononcés par des hommes d'état alliés et ennemis: Par une curieuse coincidence, STALINA prononçait Dimanche dernier un long discours dans lequel il faisait le bilan de la campagne des douze derniers mois. Le lendemain, Lundi, c'était au tour de HITLER de parler pendant 25 minutes à l'occasion de l'anniversaire de la fondation du national-socialisme, et Mardi, M. CHURCHILL avait l'occasion d'énumérer tous les succès alliés depuis un an, à une réception organisée à la Cité de Londres.

Le passage le plus significatif du discours de M. Churchill est celui dans lequel il fait allusion à l'envergure des prochaines initiatives alliées, ce qui revient à dire que le « second front » serait ouvert en 1944. M. Churchill a également laissé entendre que l'année 1944 verrait la fin de cette guerre et a aussi ajouté que l'on pouvait à tout moment s'attendre à l'heureuse surprise d'un écroulement intérieur du Reich. Néanmoins, les Alliés préparent leurs plans sans tenir compte de cette éventualité.

M. Churchill a exprimé sa satisfaction au sujet des résultats obtenus au cours de la Conférence de Moscou et souligné le fait que les trois puissances étaient arrivées à établir une collaboration solide pour la victoire et pour l'après-guerre.

M. Eden, a, par la suite, fait également une déclaration à la Chambre des Communes au sujet de la Conférence de Moscou. La rentrée du Ministre des Affaires Etrangères de Grande Bretagne était attendue avec impatience. M. Eden est un idéaliste et un homme de principes. Il a confirmé que les conversations de Moscou s'étaient déroulées dans une atmosphère d'amitié, de franchise et de respect mutuel et déclaré que ces conversations avaient particulièrement porté sur les moyens militaires de vaincre l'Allemagne le plus rapidement possible.

« Nous n'avions qu'un seul but, a dit M. EDEN, d'en finir avec la guerre. La recherche des moyens pour parvenir à ce but a grandement facilité la réalisation de l'accord. »

A Alger, le fait qui retient principalement l'attention est le remaniement du Comité Français de la Libération Nationale. Le Général GIRAUD qui avait toujours affirmé être avant tout un militaire se consacrera dorénavant exclusivement au commandement des Forces armées françaises, tandis que le Général DE GAULLE qui a démontré des aptitudes politiques que pourraient lui envier bien des politiciens de métier, demeure seul Chef du Gouvernement Français.

## AME DE LA FRANCE

*Avec le visage le plus harmonieux du monde, la France possède une âme et un caractère dont les traits sont discernables depuis plus de 1.000 ans.*

*En premier lieu il faut placer l'AMOUR DU SOL NATAL et LA PASSION DE LA LIBERTE capables d'inspirer les plus sublimes sacrifices, rendus vains quelque fois malheureusement par la lassitude des contraintes et une certaine impatience de la discipline C'est ce qui explique que quelques-uns des plus héroiques episodes de son histoire se terminent par des désastres: Alesia, Crécy, 1871.*

*Un second trait permanent du caractère français est la GENEROSITE. Depuis toujours, la France a été une terre d'asile pour les opprimés. Dans toutes ses grandes actions elle a regardé très loin au dela de ses frontières et elle a donné au monde quelques-uns des plus beaux exemples: en 1254, Saint-Louis vainqueur par le traité de Paris rend aux Anglais des territoires qu'il venait de conquérir, dans le seul but de préparer la paix universelle dont il rêvait. En 1791, les Constituants proclament la DECLARATION DES DROITS DE L'HOMME ET DU CITOYEN qui s'adresse à tous les hommes et à tous les citoyens de l'univers.*

*Dans le domaine de l'INTELLIGENCE, aucune âme n'est plus ouverte que celle de la France et dès le XIIIème siècle comme au XXème des hommes venus du monde entier s'abreuvent dans les écoles de Paris aux sources de la connaissance.*

*Aucune âme n'est plus ARTISTE. Entendons-nous: d'autres ont eu de plus grands musiciens, d'autres ont eu de plus grands peintres de rares peuples ont pu avoir d'aussi grands architectes et d'aussi grands poètes, mais aucun pays n'a pu avoir tout cela à la fois. Y a-t'il au mond un pays ayant à la fois des monuments aussi beaux que NOTRE DAME DE CHARTRES et la cathédrale de REIMS, une littérature plus grande et plus vaste, des musées-contenant plus de chefs-d'oeuvres? La apparaissent clairement les deux traits que nous avions signales dans son visage physique: la VARIETE et la MESURE.*

*Dans ces qualités de l'âme plus que dans sa force physique se trouve l'explication du rôle immense de la France: dans la peremièr de ces qualités, liées à l'âme comme au sol depuis plus de 1.000 ans se trouve aussi le plus grand motif de confiance de l'avenir. Comme le disait d'Annunzio: «SI LA FRANCE S'EN ALLAIT, LE MONDE SERAIT SEUL.»*

**B.**

## «CHARS DE COMBAT» ou ((TANKS)) MODERNES

### 2

*Le KLIM VOROCHILOV est armé d'un canon de 76 m..m 2, mais un autre modèle de ce char, le V. K. II porte sous une très grosse tourelle, un canon de 152 m..m qui tire des obus de plus de 40 kilos.*

*Dans la catégorie des tanks très lourds, on arrive à des mastodontes blindés à plus de 100 millimétres et puissamment armés. Le BALDWIN M-6, américain porte sous tourelle un canon de 76,2 ou de 90 m..m. plus un canon de 37 m..m et une grosse mitrailleuse. Le Tiger allemand, est armé d'une pièce très longue de 88 m..m lançant des obus de 9 kgr.*

*Le Tiger qui devait être l'épouvantail des Alliés a cependant été détruit en grand nombre en TUNISIE, en SICILE et sur tout en RUSSIE; c'est que les Alliés ont sû lui opposer, non seulement des tanks encore plus maniables et tout aussi bien armés;- dont certains tel le M-10 américain sont de véritables chasseurs de chars,-mais aussi une puissante artillerie montée sur châssis à chenille de tanks, et pouvant donc passer partout. En particulier, le châssis blindé du tank moyen américain Sherman, est maintenant équipé d'un canon lourd de 105 m..m mais qui n'est pas placé sous tourelle, et qui n'est pas protégé par en dessus.*

*Le gros char moderne qui possède au mieux les qualités essentielles d'armement, de protection et de vitesse est le M-6 BALDWIN américain, très supérieur au Tiger. Ce tank de 57 tonnes, long de 7 mètres, large et haut de trois, est très fortement cuirassé. Il est cependant aussi rapide que les chars moyens grâce à un moteur d'avion de 1.000 chevaux-vapeur. Son armement est très puissant et il dispose d'un large approvisionnement en munitions.*

*Le char de combat reste le plus remarquable engin de combat terrestre.*

## VOLTAIRE

Parmi les classiques dont les noms nous sont familiers dès l'enfance Voltaire tient une place à part. D'abord, par le poids de son oeuvre, qui semble ne pouvoir tenir dans une vie d'homme: les épopées dont „LA PUCELLE" et L'HENRIADE"; les tragédies parmi lesquelles „ZAIRE" et "IRENE"; les comédies telles que l'„INDISCRET"; les écrits historiques philosophiques et critiques; une correspon dance de plus de 10.000 lettres; enfin et surtout, des romans et des contes qui enferment quelque chose de l'essence même de la France.

Les plus connus parmi eux sont „ZADIG", „CANDIDE" et „L'INGENU". On s'accorde à y trouver des qualités un peu froides: clarté, détachement, esprit, ironie, et une maîtrise inégalée de toutes les possibilités, de toutes les nuances et de toutes les richesses de notre langue.

Pourtant, s'il n'y avait que cela, l'influence de cet homme sur les lettres, la philosophie et l'histoire de la France serait inexplicable. Ce Français a vécu en Suisse, en Angleterre et en Allemagne ce Déiste a été l'un des premiers libres-penseurs; cet aristocrate a prédit et préparé la Révolution; ce gentilhomme a connu les misères de la Bastille, les douceurs d'une retraite campagnarde à Ferney et le triomphe de l'Académie. Et dans toute sa vie mouvementée, passionnée et combative, il ne s'est jamais départi d'une attitude dont on peut contester la justesse, mais non pas le courage: il a accepté toute la vérité; sans jamais se plaindre, et en gardant aux humains une tendre pitié et une affection fraternelle.

Aux angoisses, aux tourments et aux déchirements d'un Pascal, il oppose des vues neuves et simples:

„L'homme est né pour l'action, comme le feu tend en haut et la
„pierre en bas. N'être point occupé et n'exister pas est la
„même chose pour l'homme"

dit-il, et encore:

„Penser à soi, avec abstraction des choses naturelles, c'est ne
„penser à rien, a rien du tout„.

Il proclame ainsi quelques principes qu'il a appliqués lui-même sans trop le laisser paraître: la réserve, la mesure, la volonté d'agir et cette force singulière de faire abstraction du moi, tout en gardant le contact avec la réalité, Ce sens du réel, nous le retrouvons tout entier dans une phrase qui à elle seule, pourrait faire justice du reproche de sécheresse qu'il s'est souvent attiré:

„Il faut aimer, et très tendrement, les créatures; il faut aimer
„sa patrie, sa femme, son père, ses enfants; il fait si bien les
„aimer, que Dieu nous les fait aimer malgré nous".

Il a aimé les créatures et les a comprises. Il a désiré pour elles, une compréhension des choses égale à la sienne, et leur a fait passionnément confiance pour l'acquérir. La dignité de l'homme, pour lui, était une revendication essentielle de la condition humaine. Et n'est-ce pas cette dignité de l'homme que les masses ont voulu obtenir en faisant la Révolution dont il a lancé la première etincelle?

Pour avoir parlé trop sincèrement des choses et des gens, Voltaire fut gai et persécuté par les puissants de son temps, Vivant loin de sa ville, il n'a pourtant cessé de poursuivre la vérité et de traduire en phrases limpides et harmonieuses ce qu'il ramenait de ses voyages. Esprit libre, il a mené vie libre:

„Un homme de lettres doit vivre dans un pays libre ou se résoudre à mener la vie d'un esprit craintif que d'autres esclaves jaloux accusent sans cesse auprès du maître».

Epris de justice et de liberté, connaissant les défauts des hommes et leur, gardant son amour, mesuré et sincère ironique et vrai, Voltaire l'immortel devient Voltaire le mortel: un homme comme nous un homme que nous pouvons aimer

LUCIE VIDAL.

## LA PRESSE KURDE

*Nous signalons, à nos lecteurs s'intéressant au mouvement culturel KURDE, les journaux et périodiques kurdes suivants:*

**RIYA TAZÉ** organe des Kurdes de l'U.R.S.S paraissant à Erivan.

**GALAWÉJ**, la plus grande revue littéraire kurde, parait chaque mois à Bagdad, avec 80 à 100 pages de texte

**JIYAN** hebdomadaire politique et littéraire paraissant à Souleymanié.

**HAWAR**, revue littéraire bi-mensuelle paraissant à Damas. Textes kurdes et français.

**RONAHI** Revue mensuelle illustré, paraissant Damas.

*Provisoirement, LE JOUR NOUVEAU paraît chaque Lundi.*

Strana Kurdî

# DE BES E

Xerabo, de bes e,
Malik şewitiyo bes e,
Malik li mîratê geriya o
t'ez kuştim, t'ez helandim
Bes e.
Erê digo Xerabo, bejna min zirav e
Nava min qendîl e
Nala minarekê, li ser rûka gayê...
Erê digo Xerabo, de bes e
Malik li mîratê geriyayo
Bes e.
Erê Xerabo, tu bûyî teniyê
Serê kirmanca tu bûyî erdê
cehîlo, tu bûyî zacê Bexdayê,
û qîra Mûsilê..
Tu bûyî şekirê Şamê
Li ser dev û lêvên min heliya o...
Ezê te bişom bi heft qalibên
sabûna Reqê,
Ji rûyê min, sêwî sêlekî, qet
pak na be.
Digo: Xerabo, te n'ez kuştim
Te n'ez rewandim...
T'ez birim mala xala
T'ez ne hemandim
T'ez birim mala apa
T'ez qewirandim
Go: t'ez birim qoca Diyarbekra
şewitî; t'ez birim xanê Hesen
paşa....
Nala têla tenbûrê
Mîna tasa fexfûrî
Li ber axaler û beglera
T'ez şikandim
T'ez birim ba serbizêra;
T'ez birim ba ebû iyûna
T'ez helandim...
T'ez birim Hir-rêna şewitî
Li ser Bîra Şerqê
Li nav lemên şimamika
ez veşartim...
Gidî Xerabo, mî dê li wê mehelê
bankir tirî
Li wê mehelê bankir tirî
Mi dawa xwe tije kiri bû
genimê cezakirî...
Mi go: ezê ji delalê xwe re bi
dim bi tirî. .
Çaxa xwediyê tirî, çav li qam û
bejna min kirî
Tereso ji qam derketî bû, dilê
wî xewirî
Avê heft çeman ji devê wê teresî
herikî, bihurî.

# DIYARÊ BILIND

Sirta diyarê bilind bê ba na be
Nevalê di kûr bê av na be
Keçikê bi kezî
Di vê çax û heyamana me de
ji heft salan û pê ve, li mala
bavê xwe, bê dostik û bê yar na be.
Çaxa pehir vî çaxî, ez
li mala bavê xwe de qîz bûm;
Salan û vê salê, darê dergûşê
li serê min bû, emel û kar be.
Qirika te dirêj e, kirika qaz û betê,
Wey l'a te arê xwedê di mala
bavê ketê....
Te sê biskê xwe ê şê
Te berda bûn
Wek carên ji carê berê
Li gora adetê
Xwezil ji xeyra xwedê re;
Minê devê xwe tê xista
gaza gerdenê, boxaza qirikê
Heya ro, li min û tu bihata
qubletê!...
Mi dî çavê te reş in, ji çavê maran
Tu ê sê biskên xwe ên şê
Berda bûn, nala topek şerîtê,
devê xirara...
Awirê vê sebavê
Ez dikuştim, ez dihelandim
Mînayê topekê ji topên Diyarbekir
Tu hevale bikî, ser derê dijminan.
Xwedê hebîna tu ramusankê
bide mi
ji xan û manê gerdenê, ji bo-
xaza qirikê.,
Ne wela... ji binya cotê guhara..
Te taqê spî, taqê li hewa
Te memik kirin nala hêkê kewa
Te xortên xelkê helandin
Bi wan rasta, bi wan derewa....
Heçî nav beyna her du dilên şêrîn
ji hev du sar kir....
Bela kula Şam û Helebê, li mala
bavê xwe yê kar kir
Xwedê bike mezinê wana bimirin
Biçûkên wan ni kari bin,
meyita bar kin.
Tişkê wan li darê delû dinyayê
ne mîne...
Werîs tu ne be; posta xwe
li nav çavê tajî bişidînin...
Ew tajî wana li dora fitlekê bajêr...
Çiv bi çiv wana bigerînê...
Bi dû tajiyê xwe de, bi
tewar kin, bê hey mal —
xerabo, veger mal!....

# DAWIDÊ DÊWID

Lêlê, lê wayê...
Zerîfa şêxo bankir, Zerîfa şêx Xelef, bira Xwedê dîne mala Xwedê dayê Hemê Şero malik ne ava be Çira di gazîya Dawıdê Dêwid bavê erebê nayê.
Xwedê dîne mala eskerê Emîr Xazî firqak eskerê Husêniya girtine ser mizgevtê; welatê Şingalê girtine.
Ziyareta şêx Ebul—Qasim bi kêra dîn û diyanetê mala me nayê.
Zerîfa şêxo bankir: Zerîfa şêx Xelef bibêje,
Xwedê dayê Hemê Şero, te malik ne ava biya, çira te li me wa kir, te pertava dilê dostê me şikand û dijmin li me şakir.
Xwedê dîne mala eskerê Emîr Xazî, firqak eskerê Husêniya girtine ser mizgevtê welatê Şingalê ziyareta şêx-Ebulqasim, li ber şêxkan û pîra şima kir.
Zerîfa şêxo bankir: Zerîfa şêx Xelef, bira roja me mınehata, ji hêla Muşilê, ji wa geliya.
Bira şewqê xwe ne da Şingala şewitî li giran û hûr kaniya...
Xwedê dîne mala eskerê Emîr Xazî, firqak eskerê Husêniya, rakirine fermana Dawidê Dêwid, bavê erebê mezinê êzîdiya, mekan li me herimî, cî li me qediya.
Zerîfa şêxo bankir: Zerîfa şêx Selef bibêje; Xwedê dayê Hemê Şero malik ne ava biya, tu li ku ma bû, hetanî vî qasî.
Xwedê dîne, mala zabitan û qumandara firqak eskerê hukûme tê girtine ser Dawidê Dêwid, kuş tine Dawidê Îso; xerab kirine bext û wijdanê Emîr Xazî.
Zerîfa şêxo bankir: Zerîfa şêx Xelef guliyê min û te kêm be, bejna Dawidê Dêwid zirav e, gula sibatê, bira şin nehata li Şingala şewitî, li ber ta'tê,
Xwedê dîne, mala zabitan û qumandara, firqak eskerê Husêniya xistine li Dawidê Dêwid, xerab kirine bext û wijdanê Hikûmetê...

ÊBDILHADÎ MIHEMED

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## CENG & BIHINGEH



GENERAL DE GOL SILAV LI LEŞKERÊN KIŞWERÊ FRENSIZÎ DIKE.



Xelkên Ewripayê Bi Payedariyan Navê Mêrxasên Ko Di Riya Azahî û Serbestiya Welêt de Hatine Kuştin Bilind Digirin, û Navên Êgîdan Pêş Çêliyên Milet Dikin. Payedariyeke Frensizî.



Bedenên Ava Dnieprê Ên Qaim û Mezin

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

Sal 1 — Hejmar 29

Duşemb' 22 Çiriya Paşîn 1943

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

BER BI SERFIRAZIYÊ VE

### Sala 1944-an

Sala şerine mezin û heye ko sala qomandên vî şerî ên dawîn e. Wezîrê brîtanî ê yekemîn Mr. Çorçil, yê ko mirovdewletekî giran û gelek bi ihtiyat e, di gotara xwe a paşîn de, ya piştî civanê Moskovayê, dida zanîn: «eniya diwemîn» sala ko bê, dê vebe û di Ewripayê de qomandine zor û xwîndar çêbibin.

Baweriya piraniya mirovdewletên Hevalbendan ev e ko sala nû wê bibe sala xelasiya cihanê ji vî şerê xedar, û vegera dema silh û aştîtiyê.

### Welatperwerên Yugoslavî

Piştî şkênandina Ordiyên Yugoslavî, zehf welatparêzên Yugoslavî gihane hev û dû û şerê dijmina kirine. Niho ev qiwetên he, bûne lek û firqeyên serpêkatî û di erdê Serbistan, Bosne û peravên Dalmaçyayê de şerê eleman û bulxaran dikin.

Ordiya Yugoslavî a xelasiya welêt bi mêranî û çavsoriya xwe nav û deng daye û dinya qail kiriye ko ji bona xelkê yugoslavyayê ji welêt delaltir û ji serbestiya wî çêtir tu tişt nîne.

### Ber Bi Polonyayê Ve

Ordiya Sor di pêşiya sînorên Polonyayê de ye. Lekên şerevaniyên rûsî milyonek kilometir çargûşe erd, ji dijmina paqij kirine û niho zordidin dergehên ko wan bigihîne Polonya û Romanyayê.

Perîşaniya elemana mezin e, elemana li tu derê nikarî bûn pê bidin erdê. Serfermandariya elemanî bixwe qala yekîneyên rûsî ên teze dik yên ko Serdariya sovyetî pey hev tîne û têxe meydana şerî.

### Gotara Mareşal Stalîn

Li ser peyiva Stalîn a dawîn rojnama rûsî «Krasnaya Zvezda» dinivîse: Bi Gotara Stalîn baweriya me a serfiraziyê, hêj xurtir bûye. Tiştine giran, rojine reş bi ser me de hati bûn, lê destê Mareşal Stalîn ê xurt lekên şerevaniyên me gihandine zeferê.

Ordiya Sor, di nav dengên şahînetên serfiraziyan û brûskên meydana şerî de, guhdariya Serdarê xwe dike. Dastana Ordiyên elemanî, ko ew nayîn şkênandin, mîna mij û dûmana belav bûye. Pêşiya Ordiya Sor de leşkerên elemanî şikiyane û baz didin, ew Ordiya Sor a ciwan ya ko di nav girîna topan û gujîna bomban de hoste bûye. Ordiya Sor dijmina dişkînîne, û ber bi sînorên Welêt ên roavayî ve dimeşe. Destê me de ala Sor, em ber bi rojê ve dimeşin, stêra ko tava xwe dide demên vî şerî ên dawîn.

## ÇAR SED BALAFIR

### Xesarine Giran Gihane Refên Japonî

MELBURN— Hefta borî di şerên hewayî de 120 balafirên japonî hatine avêtin erdê. Di nav 17 rojên ve mehê ên pêşîn de 400 balafirên japonî hatine xira kirin. 42 mekîneyên hevalbenda venegeriyane warên xwe.

BOMBARDIMANA SOFYAYÊ

LONDRE— Rojnameyên brîtanî bi xweşdilî qala bombardimana Sofyayê dikin û dibêjin ko şer di Ewripa Rohelatî de dikeve dewreke nû. Bi vê bombardimanê hemî hikûmetên Balqanan hejiyane. Hikûmetên Balkana bê şik ji xwe dipirsin: ko carekî bombardimanên giran destpê kirin gelo halê me wê çi bibe.

## BÊNIYAZIYA ELEMANAN

### Ji Bona Elemana Dergehên Hêvîyê Hatine girtin

LONDRE— Rojnama ingilîzî Îvining Standart qala gotarên Çorçil û Hitler dike û dibêje: dawiya rojên Hitler nîzing dibin; pronivîsa ko serekwezîrê Brîtanya Mezin elam daye, têxe pêş çavan ko êdî ji bona elemana dergehên hêvî û niyazê têne girtin,

CEZAYIR— Têtê bawerkirin ko Ordiyên Hevalbendan dest bi êrîşa xeta elemanî a Sangroyê bikin. Montgomerî û ordiya pêncemîn qiwetên xwe ji bona vê armancê pêk anîne.

QAHIRE— Elemana dirêjî girava Lerosê kirine, giravek ji yên donzde giravan; li wê şer dom dike; du gemiyên elemanî hatine bin av kirin; bi derbên Hevalbendan 4 Yunkers 88 xira bûne. Nûçeyên dawîn elam didin ko elemana ev girav vegirtiye.

QAHIRE— Refên Hevalbendan di delava Girîdê de li waporên dijmina xistine, û nêçîrvona di girava Girîdê de gelek hêjagehên dijmina dane ber bomban. Şêvadî balafirgeha Herakliyonê bi awakî xurt hatiye bombardiman kirin. Bombeavêjên giran di girava Rodosê de li balafirgeha Maritzayê jixistine.

## LEKÊN ORDIYA SOR

### BER BI SÎNORÊN POLONYAYÊ VE DIMEŞIN

STOKHOLM— Ûrisa işê xwe bi destekî xurt girtine û bêperwa eskerên xwe ji qadên şerî wêdetir dişînin û ew yekîneyên he, bi navv erdê ko hêj, ji destê dijmina ne hatiye xelas kirin pêş ve diçin. Di na şertên adetî de ev qiwetên he, bi ber êrîşan dikarî bûn bêne qelandin. Lêbelê Serdariya rûsî êdî tiştên ko eleman hêj dikarin bikin xweş nas dike. Du baskên lekên rûsî li bakur-roavayê Kievê û li roavayê Jitomir—Korostenê ber ve têri. Berlîn elam dide ko sih firqeyên peyade û du firqeyên rûsî ên zirhkirî zor didin leşkerên elemana yên ko hêj ji axa Zoporojye û Krivo-Rogî xwe bi şûnda ne kişandine. Herwekî Mareşal Stalîn bi xwe gotiye: Heta ko elemana Ordiyên xwe ji perîşaniyeke timam xelas bikin divê ji nû ve xwe bişûnda bikişînin û ji hindurê welêt qiwetên mayîn bînin û bêxin şerî.

Ji xwe ji gotinên serekên elemana ên dawîn, eşkere dibe ko heçî mêrên elemanî ko dikarin tifingek hilgirin têne şiyandin qada şerî, û keç û jinên mayî ko xebat ji wan tê, riya destgeh û febrîqan girtine.

## LI PESIFIKÊ

### DERBINE DIJWAR DIGEHE JAPONA

MELBURN— Bi awakî resmî didin zanîn: Di Behra Rabaulê de, refên Hevalbendan dirêjî çengkeştiyên japonî kirine, 15 waporşerên japonî derb xwarine; qriwazorek û du ber-torpiyor bin av bûne û xesar gihane qriwazorek û yanzde ber torpiyoran. Refên Hevalbendan ji balafirhilgiran bi hewa ketine û bi ser dijmina de girtine. Çekê japonî ê hewayî êrîşî gemiyên hevalbendan ên balafirhilgir kirine. 64 mekîneyên japonî hatine anîn xwar, bê ko bikarin zerer bigihînin gemiyên hevalbendan.

LONDRE— Di eniya talyanî de eleman bi 10 firqe esker berevaniya xetên xwe ên zivistanê dikin; li gora gotina hêsîrên elemanî wan emir standiye û divê ji qeneve 8 hefte pê bidin erdê. Elemanan zehf caran ber êrîşan kirine, lê hatine şkênandin û paş ve avêtin; wilo dixuye ko serfermandariya dijmin nemaz e bi xirakirina her tiştê ko destê wî digehe, dixwaze xwe biparêze. Nexweşiya hewayî dom dike; berf ketiye çiyan û riyên dora wan têrherî ne.

### Li Rohelatê Dûr

Ev deh roj in, di, Pesifîka Nîro Roavayî de, di nav bira çekên Hevalbendan û Japona ên hewayî û stolên her du alîyan de, şerine zor û xwîndar çêdibin.

Di eniya Birmanyayê de ji tevdana kewte û sedmêran zêdetir dibe. Heye ko Hevalbenda li Rohelatê Dûr û di Pesifîka Nîro-Roavayî de ji dest bi êrîşîne birinî bikin.

### Bombardimana Sofyayê

Payetextê Bilxaristanê Sofya hatiye bombardiman kirin. Ev cara pêşîn e ko refên Hevalbendan zor didin erdê Bilxara. Xwendevanên me dizanin ko hêjagehên erdê Ernewûda û yên Romanyayê, ev çend car in hatine bombardiman kirin. Refên Hevalbenda ji aliye Balqana ji dest bi êrîşî elemana û dost û hevalokên di wan kirine.

## Qewil û Ayîn

### QEWIL

Hesen û Hiseyn her du çelebî ne
Her du siwarê reş erebî ne
Her du bi şûrê kermanî ne
Her du bi xencerê xerzanî ne
Her du bi şeşxanê botanî ne
Her du bi şeşderbê qermanî ne
Her du ewladê imam Elî ne
Her du ewladê Fatime nebî ne
Her daim li meydanê sekinîne.
Hesen ban dikir Fatmê dayê
Huseyn bandikir hûrî dayê
Şûra bişînin ser seqayê
Ji bona ko em herine xezayê;
Emê kafir bînin ser hedayê
Ji bona xatirê bavê Fatimayê.
Hesen, Huseyn her du yek in
Her du şêr in, qirbelek in
Kafir kuştin yek bi yek in.
Hesen û Huseyin bi deştê de
Kafir Êzid tên ji wê de
Imam Huseyn zeft kirin
di xewlanê de;
Rimek bû, li pişta imam Huseyn da
Derxistibûn ji defa singê da
Xwîn herikî bi ser saqa cizmê da
Xwîn herikî bi rûkê erdê da:
Imam Heseyin şehîd keti bû
di Kerbelê de
Ev kafir Êzîd radibiyê
Serê imam Huseyn jêkiriyê
Laşê imam Huseyn
Li bin zikê mehînê şidandiyê
Rast kiri bû, bi ser mala xwediyê
Ev heywana kher û lal
Riya mal girt û dimeşiya
Hati bû li ber devê derî sekîniye;
Nêrî ko carkî dengê Fatmayê
Li hunduro hatiyê
Ev heywan li dengê Fatmayê
dişêhiya..
Fatmayê bi eşq û bi kêf derketiyê
Go: va imam Huseynê min
Ji xezwa kufêr hatiyê;
Gava derket ber devê deriyê
Çav li laşê imam Huseyn ketiyê
Fatmayê sê denga kir qêrêniyê
Go: ez çi b' kim ji hespê bêxwediyê
Û ez çibikim ji laşê bê seriyê
Û ez çi b' kim ji destê bê tiliyê.
Fatmayê dibêje û dibilînê
Hêstira ji nûrê dibarînê
Derdê kezebê nû dibînê.
Huseyin ban dikiri Elî Baba
Hesen ban dikir Elî Baba
Laşê mi kirin şîş û kebaba
Halê me ji dest Êzîd xerab e.
Fatmê go: hey bînin, bînin
Her çar eqtabê pêxember
Zû ji mir' bînin
Emê ber bi xezwa Ezîda de bişînin
Bila bi stoyê wan bigirin
Ji nav milê wan hilqetînin
Belki heyfa îmam Huseynê min
Ji wan hilînin.

## SANGRO

BERLÎN— Radyoa elemanî mukir tê ko leşkerên elemanî xwe ji Sangroyê bi şûnda kişandine. Sangro di eniya talyanî de ye û yekîneyên Ordiya heşt ev der vegirtiye.

LONDRE— Radyoa Moskovayê elam dide ko sefîrê Sovyetistanê li Londrê M. Gusev di civanê kardariya Ewripayê de, wê bibe nimînendeyê Sovyetist anê

# DEMA NIHA

## BOMBARDIMANA BERLÎNÊ

REFÊN BRÎTANÎ BÊ ETLAHÎ LI BERLÎNÊ DIXIN

STOKHOLM— Ev çar şev in, Berlîn têtê bombardiman kirin. Refên brîtanî ên mezin her şev du û heta sê hezar ton bombe avêtine payetextê elemana. Bitenê şeva Yekşembê 25.000 peya hatine kuştin û 30.000 jî bê ban û serban mane. Di nav her deqîqakê de, bombeavêjên brîtanî ên mezin 7,7 ton, ango 77.000 kîlo bombe berdidan hêjagehên payetextê Germanistanê.

## 150 NOQAV

XESARÊN ELEMANA GELEK GIRAN IN

LONDRE— Di nav şeş mehên dawîn de, qiwetên Hevalbendan 150 noqavên elemanî bin av kirine, pê 7.000 serbend û deryavanên elemanî hatine kuştin an fetisandin.

LONDRE— Qerargeha Yugoslavî a mezin ya xelasiya welêt elam dide ko di Sirbistanê de di navbira leşkerên Yugoslavî û yên eleman-bilxarî de şerine xwîndar çêdibin. Di Sirbistana Roavayî de yekîneke bilxarî hatiye qelandin.

## Gotara Kordel Hal

DI PÊŞIYA CIVATMILETÊN EMERÎKANÎ DE

Nû—York— Wezîrê emerîkanî ê dervekariyê Mr. Kordel Hal di pêşiya civatmiletê emerîkanî de peyiviye, qala civanê Moskovayê kiriye û gotiye: We ez gelek serbilind kirim, bi vexwendina xwe ko ez bêm û pêşiya we de, qala qonferensa Moskovayê bikim.

Civanê Moskovayê ji hêla bingehên xwe ên eskerî û siyasî gelek hêja û qedirgiran bû. Niho miletên hevalbend gihane dewra ko der hemî eniyan dest de bi êrîşan dikin. Karê Pêşveajotina şerî, di destê me de ye û li her derê, dijminên me têne şkênandin û wilo jî wê dom bike. Dema şkênandina qiwetên dijmina bitevayî, wextekî nîzing de, wê bê. Lê belê ji bona ko emê bigehin armanca xwe, hêj canfidakariyine mezin divêtin û divê Emerîka bi xebata xwe, arîkariya Ordiyên Emerîkayê û yên Hevalbendan bike.

Heke şerê ko em û Hevalbendên me dikin ne ji bona azahî û serbestiya dinyayê biwa me ne dikarî bû, wilo serfiraz bibin. Brîtanya Mezin, Sovyetistan, Emerîka û Çîn qail in ko ji bona parastina silh û aştîya Cihanê, piştî vî şerê xedar, tevkariya ev her çar dewletan bivênevê ye Di civanê Moskovayê de me qala zehf pirsên Ewripayê kirine. Peyayên ko ji vî şerî berpirsiyar in dê benê êşandin. Dawî Mr. Kordel Hal bigotinên hêja qedrê Mr. Îdin û Mareşal Stalîn girtiye û gotiye: Em îro dikarin li pêşiya xwe bi dilekî rahet binêrin, emê hikmî rojên ko bên dê bikin, rojên ko aşitî û edaletê bînin cihanê.

## ARIKARIYA EWRIPAYÊ

HEVALBEND HAZIRIYINE MEZIN DIKIN

NÛ YORK— Di Emerîkayê de ji bona arîkariya miletên dost û Hevalbend yên ko niho di destê dijmina de perîşan ketine, debarine mezin têne kirin. Piştî şkênandina Mihwerê û xelasiya wan Hevalbend dikin her tiştê ko ew hewcedar in li gora destgerî bişînin wan, an bifiroşin wan. Di vê babetê de Hevalbend didin eqlê xwe ko taqeta hin miletan a kirînî, ji ên din mezintir e û ji aliyê din miletin hene ko pereyên wan, kêm lê perîşaniya wan mezin e, gelo di pêşiya vî halî de bi çi awayî divê bête gavavêtin.

Wilo dixuye ko Hevalbend di pirsa arîkariyê de, ne li gora taqeta miletan a kirînî, lê belê li gora hewcedarî, û tengasiya wan, gavbavêjin. Civata ko ji bona arîkariya welatên perîşan hatiye danîn qerar û elamdaye xelkê Emerîkayê ko wan divêt cilên xwe ên kevin di nav 15 rojan de bidin vê civatê. Cilên kevin di pêşgehên vê civatê de, dêbenê kom kirin û wexta xwe de, wê bêne rêkirin, welatên ko xelkê wan belengaz bûne.

## ÇIROKEK

Şev bû şev li me dizimzimî
Diz bi kêrwên ve qedimî,
Şev bû şev li me dilezlizî
Diz li kêrwên diqelizî,
Kurtanê kerê seyid dizî
Tu j' ocaxa natirsî,
Apê Îsa tu zanî
Ker va ye, kurtan kanî.
Kurtan çû Tora Banî
Tu serekê dizan î.
Apê Îsa rabû piyê
Dû şopa kurtan ketiyê
Salxê kurtan hilaniyê.
Kurtan çu cem Kuto Sefûr
Li welatê jorî yê.
Apê Îsa meşiya
Li xelkê bû mêvandariyê
Apê Îsa gotiyê:
Ez çun cem mala xweltika xwe a zaza
Siyê ro û sê şeva, li ber jina xwe raza
Ne pirsî li halê me feqîra, me belengaza,
Ezê gelkî birçî bûm
Bi her du desta ez qepiçîm
Ez flîtîm kiwara pîvaza.
Apê Îsa rabû piyê
Li dû şopa kurtan ketiyê;
Salxê kurtên hilaniyê
Li welatê joriyê...
Go: ez çûm cem mala xwaltika xweyê Nesebê
Ji mi re çêkir girara ber kezebê
Gotina ko ji mi re got
Go mi salixê kurtên hilaniyê
Li vê mirata Helebê.
Apê Îsa rabû piyê
Bi du şopa kurtên ketiyê
Hat Heleba rengiyê;
Go: ez çûm mala xala, xalê xwe yî Heyinder..
Ji mi'r anîn leganek mewijê zer
Destek tûtina Mûşê li ser
Xwedê jê razî be û gul pêxember.
Apê Îsa tu zanî
Ker va ye kurtan kanî
Tu serekê dizan î.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Merdestî



Ji Berpehên Eniya Sovyetistanê: Siwarên Rûsî



Mopîzanên Brîtanî Çavê Xwe Li Tangekê Digerînin



Li her derê didevaniya dijmina dikin



Şer dom dike, lê destxetên çeleng jî pêş ve diçin.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR DU KALNT

1ère ANNÉE — LUNDI 22 NOVEMBRE 1943 — NUMÉRO 29

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur-Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victore

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

On se rappelle la récente décision du Gouvernement alleman de retirer la Direction du Ministère de la Propagande au Petit Docteur Goebbels—décidément trop déconsidéré—pour la confier à l'Armée. Cette décision semble provoquer d'étranges résultats.

Jamais encore, en effet, le nombre des officiers généraux venus devant la Radio du Reich n'a été aussi élevé qu'au cours de ces jours derniers. Et quel fut le thème central de leurs discours? Il fut aussi loin que possible de tous les sujets qu'auraient dû leur suggérer leur formation et leur rôle. Au lieu des développements stratégiques, des compte rendus militaires, tous ces chefs de l'Armée allemande se sont lancés dans des réflexions d'un curieux néo—mysticime.

On sait, en effet, que depuis leurs premiers insuccès, les Allemands sont hantés par l'idée d'un «coup de poignard» qui pourrait provoquer un nouveau Novembre 1918. Hitler en a du reste parlé dans son discours insistant mala droitement sur la situation selon lui absolument différente du Reich au début du cinquième hiver des guerre.

Le Général Jodl est venu à la rescousse, affirmant en termes vagues qu'il ne pouvait être question d'une nouvelle débâcle.

Le Général Dietl, commandant en chef du Groupe d'Armée «Nord» sur le front oriental, a renchéri encore, clamant avec force: «Comme commandant responsable d'une puissante force allemande, je peux vous affirmer que nous avons le devoir de croire dans les paroles du Fuehrer, aussi critique que soit la situation.»

Enfin, le Général Dietmar n'a guère employé de termes militaires dans sa dernière causerie, lui qui était si friand de «retraite élastique» et de «stratégie mobile». Par con tre, il a affirmé sans sourciller: «La confiance légitime du Fuehrer dans la victoire est basée sur des appréciations d'un genre irrationnel, que lui seul peut peser à leur juste valeurs. S'il est sûr de la victoitoire, il doit avoir des raisons indiscutables-même si elles ne sont pas apparentes à première vue».

Ces pavés de l'ours lancés par tous les grands chefs de la Wehrmacht ont paru si écrasants à certains commentateurs alliés, que certains se sont demandés s'il ne agissait pas d'une campagne concertée, menée dans le but de rejeter toute responsabilité sur Hitler, pour disculper les Généraux et préparer ainsi une dictature militaire allemande.

Cette hypothèse est séduisante mais rien ne permet d affirmer qu'elle ne soit prématurée. Il peut tout aussi bien s'agir de l affolement de ceux qui ont fait de la force leur unique Dieu, et qui s'aperçoivent enfin qu'ils sont sur le point d'être vaincus. Comment, en effet, expliquer autrement ces paroles d un commentateur de Radio Berlin:

«Les journées des 9, 10 et 11 Novembre constituent une véritable victoire national-socialiste; pendant ces trois journées, le Reich a gagnée la Bataille de l'Allemagne, la plus décisive peut-être de toute la guerre».

Il est certain que ce n'est pas sur le front oriental que les Allemands ont pu remporter de victoires, depuis longtemps. Offensive d'été, offensive d automne, offensit ve d'hiver: l'Armée Rouge n'arrête plus son avance. Au cours d'une seule semaine, elle a pris Jitomir, Korosten et Rejitza. Les Allemands apprennent enfin la signification du «blitzkrieg»—à leurs dépens.

C'est pour se consoler de leurs défaites sur tous les champs de bataille qu'ils en sont reduits maintenant, après avoir annoncé des «victoires» contre l armée italienne, à parler de «victoires» remportées en Allemagne même. contre la hantise collective de la défaite.

INTÉRIM

## GEORGES CLÉMENCEAU

### LE «PERE LA VICTOIRE»

*Georges CLEMENCEAU, c'est toute l'histoire de la 3ème République française. Mais c'est surtout, pour tout Français. „le Père la Victoire".*

*Il y a un quart de siècle, CLEMENCEAU personnifiait et exprimait la FRANCE, tout comme le général de GAULLE personnifie et exprime la FRANCE d'aujourd'hui; il représentait la FRANCE se levant contre les tyrans: tyrans de l'esprit, tyrans du corps, tyrans de l'âme; il fut enfin, comme l'a si bien dit un ami de la FRANCE, „un des très grands hommes de ce monde."*

*En 1917, après trois ans de guerre, la situation des Alliés était grave; elle paraissait sans issue: Les troupes étaient lassées et les grands chefs ne brillaient pas par l'enthousiasme et la confiance. De plus des évènements désastreux se succèdaient: échec militaire du printemps de 1917, écrasement de la ROUMANIE livrant à l'ALLEMAGNE pétrole et blé, défection russe, défaite de L'ITALIE sur la PIAVE, guerre sous-marine à outrance, inévitable lenteur des premiers efforts américains, campagne défaitiste à l'arrière, etc... C'est alors que, le 16 Novembre 1917, POINCARE se décida à appeler à la Présidence du Conseil celui que l'opinion publique réclamait: CLEMENCEAU. Immédiatement la FRANCE sentit qu'il y avait quelque chose de changé. A la tribune de la Chambre, Clemenceau fit connaître au pays quelle serait sa politique:*

*"On dit qu'il faut faire la paix. Je la désire aussi, mais ce n'est pas en bêlant qu'on fera taire le militarisme prussien. On m'a demandé aussi une formule; la voilà; elle est la même partout:* Politique *Intérieure?* **Je fais la guerre;** *Politique Etrangère?* **Je fais la guerre;** *Je fais toujours la guerre;*

*" La malheureuse Roumanie est obligée de capituler? Je continue à faire la guerre, et je continuerai jusqu'au dernier quart d'heure, car* c'est nous qui aurons le dernier quart d'heure. "

*Enfin, on se rappelle le mot fameux qu'il prononça; "Je combattrai devant Paris; je combattrai dans Paris, je combattrai derrière Paris."*

*"Oui", disait-il encore, " les Allemands peuvent prendre Paris, cela ne m'empêchera pas de faire la guerre. Nous nous battrons sur la Loire, puis sur la Garonne, s'il le faut, et même dans les Pyrenées; on continuera la guerre sur mer, mais quant à faire la paix, jamais !"*

*La qualité primordiale de Clemenceau, c'est le don de déméler les choses et de les voir simples, le don de saisir le fil de l'écheveau. Cette réduction lui permettait d'agir. et d'agir vite. Ministre de la guerre, il fit preuve d'une rare clairvoyance. Il déclara:*

*" Nous vaincrons parce que nous voulons vaincre et que nous le voudrons, jusqu'au bout, quoi qu'il puisse arriver. Nous vaincrons parce que nous n'avons pas d'autre choix que de vaincre, si nous voulons laisser la vieille terre des Gaules aux fils de ceux qui la façonnèrent en une France de grandeur et de beauté. Nous vaincrons parce que si nous avons commis de grandes fautes, nous sommes dignes de les racheter. Nous vaincrons parce qu'il est impossible que des Français étant encore vivants, on puisse entendre cette parole dans le monde: La France a été. "*

*Véritable animateur de la guerre Clemenceau fit face de tous côtés. Et voici. ce que, en moins de 6 mois, il tira d'une situation quasi desespérée: le commandement unique fut confié à Foch; les débarquement américains passèrent de 30.000 hommes par mois à 300.000; la volonté nationale fut tendue pour le combat à outrance, la trahison châtiée, les défaitistes jugés, les intrigues de couloirs pulvérisées, les ministères rajeunis, etc. etc.*

*Le 12 Juillet, trois jours avant l'offensive allemande, Clemenceau, apparut dans les tranchées du Mont-Haut. Il avait déjà sa silhouette de légende, avec son chapeau cabossé et son cache-poussière, sa moustache blanche et son oeil étincelant. Il passait dans les premières lignes, s'arrêtait montait légèrement sur le talus, fixait d'un regard rieur les hommes qu'il rencontrait, repartait après un "ça va, les enfants;" auquel répondait un long murmure de confiance.*

*Clemenceau laissait derrière lui une impression de force et de sécurité qui se propageait comme un feu brûlant... Il allait tourner dans un boyau, quand il se heurta à un jeune officier. Il se fit expliquer par lui tout le dispositif du secteur, colla sa grosse moustache au créneau. Son inspection terminée, il se montra satisfait. Les hommes, très émus, ne répondaient pas. Clemenceau leur serra la main doucement puis s'éloigna. Soudain une voix éclaté: " On ne peut pas laisser le Vieux s'en aller les mains vides? Que pourrait-on lui donner?"*

*Des coquelicots innombrables cachaient les plaies de la terre;-en quelques secondes, une brassée de fleurs rouges fut ramassée. Un sergent prit le bouquet et courut derrière Clemenceau.*

*" Un petit Souvenir, Monsieur le Président ;"*

*Clemenceau eut un mouvement de la tête, le regard mouillé sous les sourcils durs... Il ne pouvait articuler une parole les mots restaient dans sa gorge serrée.*

*Il disparut. Le soir, rentrant à Paris, il déposait dans un vase, sur sa cheminée, les fleurs du front. Le petit bouquet de coquelicots ne devait plus jamais le quitter; il repose, lié avec un ruban tricolore, dans le cercueil de Clemenceau...*

*Cependant, le 15 juillet Gouraud brisait l'attaque décisive allemande. La contre offensive, ainsi rendue possible, était lancée, le 18 août; et après 3 mois et démi de succès, c'était enfin le 11 novembre l'armistice,* Notre *armistice... A la Chambre, les députés et la foule restent debout dans une acclamation sans fin. Clemenceau, chancelant dans ce tourbillon d'hommages, gagne la Tribune. la main levée demande le silence. Et, d'une voix étouffée. il adjure les uns et les autres de prolonger cette fervente union des âmes: " faisons-nous, en un moment pareil, la promesse de toujours travailler, de toutes les forces de notre cœur. au bien public."*

*" Et puis, continua-t-il, honneur à nos grands morts qui nous ont fait cette victoire; Grâce à eux, la France, hier soldat de DIEU, aujourd'hui soldat de l'Humanité, sera toujours le soldat de l'Idéal."*

*Artisan incontesté de la Victoire, Clemenceau se retira bientôt. vers cette terre de Vendée d'où il était venu. C'est là qu'il mourut, il y a 14 ans.*

*Nous concluerons en citant une de ses paroles, qui est d'actualité:*

*" Nous avons encore, nous Français, quelque chose à dire et à faire dans le monde ».*

LÉO LEROY.

## PENELOPES 1943

Cette histoire se passe en Hollande occupée, et pour être tout à fait précis, a Arnhem.

Dans un magasin, tout le personnel féminin a reçu l'ordre, pendant les heures calmes, de tricoter chaussettes et pull-overs pour les soldats allemands sur le front oriental.

Le surveillant passe:

Toutes les femmes tricotent avec passion.

L'inspection est finie...

Avec la même passion, les mains agiles défont les tricots commencés.

Pénélope est toujours aussi rusée. Et Ulysse, attendu avec impatience, s'appele la Liberté.

## LES GEOLIERS INQUIETS DE LA FRANCE

On se souvient qu'avant d'envahir un nouveau pays, l'Etat Major allemand préparait avec le plus grand soin tous les imprimés nécessaires, ainsi que des affiches dans la langue du pays. Cellesci appelaient les populations au calme, leur ordonnant de remettre toutes les armes à feu aux autorités d'occupation, Toutes ces affiches et ces imprimés étaient prêts en Allemagne, dès Août-Septembre 1939.

Voici que les experts allemands se voient amenés à prendre des précautions analogues, mais cette fois-ci en prévision d'événements d'un tout autre genre.

A Paris, des affiches viennent d'être imprimées par la Préfecture de Police, invitant la population à garder le calme et à demeurer chez elle trois jours en cas de débarquement allié. D'autres affiches prêtes en province ordonnent à tous les hommes de 20 à 70 ans de se rendre immédiatement, en cas de débarquement allié, dans un lieu fixé à l'avance, une caserne ou un camps. Les geoliers s'inquiètent.

## POEME DE LA FRANCE MALHEUREUSE

par SUPERVIELLE

Nous sommes très loin en nous-mêmes
Avec la France dans les bras.
Chacun se croit seul avec elle
Et pense qu'on ne le voit pas.
Chacun est plein de gaucherie
Devant un bien si précieux,
Est-ce donc elle la Patrie,
Ce corps à la face des cieux?
Chacun la tient à sa façon
Dans une étreinte sans mesure
Et se mire dans sa figure
Comme au miroir le plus profond.

Strana Kurdî

# BEDEWCANA HUSEYN AXA

Ax lo yeman, Ûso yeman, axlê yeman...

Bedewcanê, kezeb kulê, dil qa zanê, te sing gewrê, berfa Terebzanê...

Eman Ûso, bira li me ne hata îda vê qurbanê.

Qîz û Bûkê Reşûya giştik kişyan ber govendê, ber dîlanê.

Bira Xwedê dîne mala Zeynel Beg axê Reşûya, bi destê zorê seba hezar mecîdî bertîl standim, ji Ûsê Husên axa, kekê Nûrê suwarê qilyê, seîsê modeliyê, kilê çavê mi Bedew canê

Eman Ûso, nabe derdê dila pir giran e, derman nabe, goşt û neynûk ji hev ra nabe.

Kê go, kê ne go ji bextê min û te ra Kemal paşa li Anqerê şi rûtê dîne bi paşa be, Ismet paşa bi awûqatê duwela be, kê go kê ne go Roja înê û Xutbe ji dinyê rabe; kîlo û xiram li dinyê di peyda be. Sûndxwarî me tu cara terka Ûsê Husên axa na kim heta kindira mi li cem kindira şêx Seîdê Rehmetî li Diyarbekir bi hêlkan u bi dar be. Eman Ûso, te ez ne xwestim û... ez revandim, kirim ma'rekî ji ma'rê nîv kuştî li ser çiya ez rekandim.

Ez kirim taseke ji tasên çingo, li kaniya Eyin Zil-xayê ez çikandim.

Te ez birim qoce Ûrfa şewitî, yekî sera walî, qonaxa çinge; daîra mezin mehkema...

Xaîn te ez gerandim, te ez kirim fîncana ferfûrî, li qehwa Mihemed Emîn, kekê Lamî, li destê hemî kesî te ez gerandim.

Xwedê dîne mala Zeynel Begê, axê Reşûya, seba hezar mecîdî —bertîl bi destê zorê ji Ûsê Husên axa sitandim da Remakê Keçel di teresê kuça ez gerandim.

Eman Ûso Kolkê şewitî, bi şewite ber bi ba ye.

Eman Ûso, Xaîno, mi tera ne go, mi birevîne, bavî mala kher Osman paşa Hustu-xwarizk, di ser ra ye.

Heg li wira ne bû, mi birevîne bavî paş Husênê Qucaxi. kekê Gulizerê, kilê çavê Zerif Xatûnê, daîm sed û çel xortên sîwêrekiya tev tivingê enextara, tim vê ra ye..

Heg belkî, li wira ne bû; mi birevîne bavî paş Emerê Hecî Osman, bavê Fethî û Reşad li Qere Boxazê rûdine, daîm benda qaçxuna ye. Li wira ne bû, mi bavî paş Hesen axa ji mala Heciya ye,..

Ji bav û kalê Xweda daîm benda serserîya ye...

Heger li wira ne bû mi bi revîn e bavî paş Mehemed Emîn kekê Lamî beranê çar qoç, kela van xwînya yê...

Heger wira ne bû, mi bire vîne, bavî paş Birahîmê Kara, serê qelema wî çîçikê jarê.

Te gerandiye belkî sitara me, li wira ne bû, mi birevîne bavî paş Evdulqadir Qedûrê Kinik Railelya exû Zerga, perçak polatê duwela ye.

Heger li wira ne bû, Xaîn Ûso mi birevîne bavî paş Bozan Beg lawê Zulfeqarê, Fat Çûçê ji bav û kalê xwe da mezinê 700 malê Hîzolayê. Heger li wira ne bû mi birevîne, bavî paş Hirço û Bozan Beg her du lawê Şahîn Begê, ji bav û kalê xwe da daîm mezinê 2.000 malê Dûgerîn û Beraza ye.

Heger li wira ne bû, mi birevîne bavî paş zor Mehmûd Begê zerî ji bav û kalê xwe da xwîkîyê duxwe ji na bêna her du ferata ye.

Heger belkî li wira ne bû mi bireyîne bavî paş lawê Seyfedîn paşa ji bav û kalê xweda mezinê 4.000 malê Hezroya ye. Heger belkî sitara me tu ne bû, tirên hene Anqara va ye.

Mi birevîne bavî paş Kamil Beg lawê Hecî Ehmedê Ewînê, wêmin û Ûsê Husên axa fik bike, bi Hukmê va zêra ye...

Bişewite mala Zeynel Begê xweda Rebîm, pergala wî bela be.

Seba 1.000 meçîdî bertîl, ez sitandim ji Ûsê Husên axa, kekê Nûrê, suwarê qilyê. Xortê çaxa di mi ra ye, bi destê zorê ez dame Remê Keçel qebraxê ber firna ye,

Miradê min û Remê Keçel wek tiştekî şerîeta Mûhemed qebûl nake li cem dilê mi, wek rîsyak goştê van wehşa ye.

Eman Ûso, were li min û li Kolkê wêran li vê Ziyaretê.

Mektûb hatî ser kaxetê... Ûso Xaîno mi go: mi birevîne derba ewilî bavî paş Mehemed Emîn kekê Lamî, qoca Siwêreka şewitî.

Reîsê hikûmetê heger belkî li wira ne bû, emê hev du birevînin herin Şama Şerîf bigerin, bi hêsîrî li xurbetê...

Rebîm mi neheqiya Zeynel Beg qebûl kirî, tu qebûl neke destê mi bi pêxîla Zeynel Beg keve Roja Haşirê, li ser îmanê, li axiretê.

EBDILHADÎ MIHEMED

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## CENG & BIHINGEH



Leşkerên Frensa şerevanî Silav Li Ala Xwe Dikin.



Eskerên Yekîneyên Dirzî direqisin

# TOBEDAR

Zembîlfiroş zembîla tîne
Li sûk û çarçiya digerîne
Gul xatûn ji jor de dibîne
Ji eşq û dila dihebîne
Go: zembîlfiroş lawikê derwêş e
Kerem bik were pêş e
Bihayê selika bibêje
Pir bibêje, hindik me bêje.
Zembîlfiroş lawikê Ebas e
Bi tena-derpê û kiras e
Xwe ji nav lepê xatûnê nake xales e
Zembîlfiroş go: xatûnê ez tobedar im
Ez tobekarê rebê cebar im
Zembîlfiroş lawikê feqîr e
Tu wer'ser doşeka mîr e
Tev bide zilf û herîr e,
Şixul bike heyreta te tê;
Emê bi xeyra te herin cunetê.
Ez bi soz û qerar im
Ez xwediyê kiflet û eyal im
Ez li ber rebê xwe bê qerar im,
Xatûna li ser wî banî
Çav kir wî dergevanî
Derî lê girt û mifte anî.
Zembîlfiroş go: xatûnê
Dilê min dibiyê
Tu destûra min bidî
Ez derkevim ser banê xeyniyê
Ezê du qam sunetê rebê xwe bikim
Di dû re ez li ber xatûnê sekinî me.
Zenbîlfiroş misîn bi destê xwe girtiyê
Banî ket ser banê xeyniyê
Dest limêjek teze girtiyê
Du qam sinet li ber rebê xwe kiriyê
go: bismilah-er-rehman-er-rehîm
Û xwe di xênî wer kiriyê
Milyaketa li ezmana hefta gotiyê
Çi lawikê xweşik e.
Rahiştin zembîlfiroş
Danîn ser erda nermik e.
Xatûnê di qulekê re nêriyê
Zembîlfiroş çawa direviyê
Xatûnê daw û derling hilkiriyê
Xatûnê mîna tajiyê
Bi dû zembilfiroş ketiyê,
Zembîlfiroş kir û ne kir
Xelasiya xwe ji destê xatûnê ne kiriyê
Wê gavê zembîlfiroş sekiniyê
go ya erdê biqelêş û ez tê kewimêyê
Xatûnê hat û li ser sekinî
Nerî ko zembîlfiroş di erdê çûye
Ewê go ya rebê, ez jî bi dû Zembîlfiroş de herim
Vê erda tariyê
Her du bi dû hev de ketin bin axê,

## Hezar Balafira

### 2.500 Ton Bombe Avêtine

LONDRE— 1.000 balafirên brîtanî direjî axa Germanistanê kirine û li Bajarên Berlîn û Ludwigshafenê xistine û 2.500 ton bombe avêtine hêjagehên dijminan.

BARÎ— Radyoa Bariyê elam dide ko Kralê talyana Viktor Emanuel hi banginek ji xelk û welatperwerên talyanî xwestiye ko ew bi hemî qiwetên xwe şerê elemanên zorker bikin,

STOKHOLM— Li gora rojnameyên Svêçî firqeyke rûmanî xwe ji axa Qrimê xelas kiriye û hatiye erdê Romanyayê.

Sal 1 — Hejmar 30

Duşemb 6 Kanûna Pêşin 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edrêsa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

DERBINE GIRAN Û DIJWAR

### Cengê Noqavan

Dengê serfiraziya noqavên elemanî êdî nayê. Emîraliya brîtanî bi isûlên xwe ên nû û bi xebata refên xwe a fidakar, di Behrên cihanê de zora wan biriye. Di nav 6 mehên dawîn de qiwetên brîtanî 150 noqavên elemanî binav kirine û pê 7.000 serbend û deryavan an hatin, e kuştin an di nav pêlên behran de fetisîne.

### Bombardimana Berlînê

Ev deh roj in refên brîtanî û emerîkanî bi şev û bi ro dirêjî hêjagehên elemana dikin. Erdê ko tê de ev êrîş çêdibin ecêb mezin e Di Behra Spî de hêjagehên Girîd, Rodos, Yewnanistan, Yugoslavya erdê Ernewûda û axa talyana, di Balqana de payetextê Bilxaristanê Sofye di bin derbên refên brîtanî û emerîkanî de xira dibin.

Li roavayê Ewrîpayê, febrîqe, destgeh, karxane û balafirgehên Frense, Belçîke û Holendayê bê etlahî têne bombardiman kirin.

### Heçî Axa Germanistanê

Ji bona elemana qey bihinistandin û çav-vekirin heram bûye. Di nav panzde rojên dawîn de refên brîtanî 13,000 ton bombe avêtine Berlînê. Bajarên elemanî ên mayîn mîna Bremen, Manhayim û Ludwigshafen jî ne hatine ji bîra kirin. Her yekî ji wan di nav heftekê de 1.000 û heta 2.000 ton bombe xwarine. Êrîşên Berlînê ên dawîn de, her şev hezar balafirên brîtanî dirêjî payetextê Reyxê dikirin û 2 û heta 3.000 ton bombe berdidan.

### Eniya Talyanî

Qiwetine teze ji nû ve hatine Italya nîroyî û ordiya Brîtanî 8 û a Emerîkanî 5 zor didin riyên Romayê, her çend jî nexweşiya hewayî dom dike û dinya berf û baran, û herî ye.

### Cengê Japona

Di welatê Rohelatê Dûr û di Pesîfîka Nîro-Roavayî de Hevalbendan di şerên behir û hewayî de gelek serdest bûne. Heta îro noqavên emerîkanî 505 waporên Japona bin av kirine. Ji destpêka şerî û heta niha qiwetên hevalbendan 1.432 waporên japonî xeriqandine.

### Ordiya Sor

Piştî ko di Propoiskê de leşkerên elemana hatine şkênandin, niho geliltangên rûsî ên gelek bilez, dane pey elemana û wan paş ve dajon. Propoisk ji bona elemana kelate ke mezin bû, lê di pêşiya zora yekîneyên rûsî de serdariya elemanî dev ji vê asêgehê berda. Niho Ordiya Sor di dirêjahiya 160 kilometran de, ber bi avraz û penga yên Pripetê ve pêş ve diçe. Xetên elemana yên zivistanî hatine şkênandin û qiwetên rûsî ên mezin yên ko Gomel standine, êdî serbest in û dikarin bidin pey qiwet ên elemanî yên ko li ser riya Varsovayê — payetextê Polonyayê — xwe bişûnda dikişînin. Serfiraziya Ordiya Sor a dawîn gelek hêja ye, ji ber ko eleman niho di erdeke rast de xwe bi şûnda dikişînin û her wekî dinya gelek sar e û erd qerisiye, ew nikarin ji xwe re çeper û penaha bikolin û têde xwe veşerin û bervaniya xwe bikin. Ev du sal in eleman xetên ko niho hatine şkênandin asê dikirin, lê di pêşiya Ordiya Sor de ev xetên he hilweşiyane.

Ji aliyê din serdariya elemanî duhî di danezana xwe de mukir dihat ko êrîşa elemanî sekiniye. Ordiya Sor niho ji Zlobinê bitenê 15 mîl dûr e, rêhesina Leningrad Odesayê.

### Bi Vegertina Gomelê

Cengê axa Rûsya Gewir ketiye dewra xwe a birinî. Nûçeyên Moskovayê elam didin ko bîst perçewelatên Rûsya Gewir ji destê dijmina hatine azad kirin. Niho Ordiya Sor di Rûsya Gewir de zor dide şeş asêgehên elemana en xurt: Mogilev, Bobruîsk, Rogaçev Zlovin, Kalînkoviçî û Mozîr.

Eleman bi xwe mukir tên ko rewişa eskerî di Mozîrê de bêhêvî û niyaz e. Ji aliyê din Ûrisa bajarê Bugakoşelevskayayê vegirtine, yê ko li ser rêhesina Gomel—Bobruîskê de ye, û pê yekîneyên rûsî 45 kilometran pêş ve çûne. Di Pripet û Berezino jêrîn de zehf gund û ovahîgehên din jî ketine destê Ordiya Sor.

### Di axa Kievê de

Hemî êrîşên elemanî hatine paş ve zivirandin. Di enişka Dnieprê de Ûrisa Aleksandrovska standine, bajarê ko 54 kilomêtir bakurê Nikopo tê de ye. Di Korostenê de şerekî zor dom dike.

### Pêşekarêkî Elemanî

Ê eskerî duhî êvarê di Radyoa Berlînê de qala şerê axa Sovyetistanê dikir û digot: Ûrisa di bakurê Qrimê de bi qiwetine mezin êrîşî çeper û asêgehên me kirine; û li hin deran xetên me şkênandine, lê beriya ko bên pêşiya çeper kora me a bingehîn hatine sekinandin. Lêbelê wilo dixuye ko Ûrisa ji nû ve di Qrimê de, bi qesda derêxistina me jî vê dest bi êrîşan bikin.

# NOT BALAFIRHILGIR

**Stola Emerîkanî Hin Bi Hin Xurtir Dibe**

Nû—York— Di nav yanzde mehên vê salê de destgehên emerîkanî 40 waporên balafirhilgir çêkirine û di nav pênc mehên ko pêşiya me de ne 50 balafirhilgirên din wê bikevin behrê.

CEZAYIR — General Montgomerî emirnama jêrîn şiyandiye leşkerên Ordiya heştemîn: Hevalbenda erdê Italyayê zebt kirine, lê hêj eleman di pêşiya Romayê de pê didin erdê. Niho wext hatiye û divê emê elemana bavêjin heta bekurê payetextê talyanî, Eskerin ji yên elemana çêtir zora wan birine. Ew ketine halê ko me dixwest wan têde bibînin. Niho emê derbeke dijwar bidin wan; xwedê arîkarê we be, pêş ve bimeşin.

## GOMEL KETIYE

**Ordiya Sor Di Axa Rûsya Gewir De**

Moskû— Piştî vegirtina Gomelê Ordiya Sor ber bi Minskê ve bi lez pêş ve diçe.

CEZAYIR — Li 26-ê mehê nêçîrvanên frensiz, di sêr behra Spî re dirêjî refeke elemanî a mezin ji bombeavêjan bihevketî kirine, û çar bombeavêjên alemanî anîne xwar û xesarine dijwar gihandine pênc hebên din.

QAHIRE — Radyoa Qahirê dide zanîn ko li Rumanyayê di nav heft rojan de bi tometa ko zimandirêjiya Hukûmeta Antoneskoyê kirine 3.000 peya hatine danîn ber. tifinga.

## BOMBARDIMANÊN XURT

**6 HEZAR TON BOMBE DI NAV 8 ROJAN DE**

Londre— Di nav 8 rojên dawîn de refên brîtanî 6.000 ton bombeyên şewat û tekandinê avêtine Berlînê. Mareşal Haris, serdarê qiwetên brîtanî ê hewayî yên bombeavêjan ev tişt bi awakî resmî elam daye.

LONDRE — Mîna rojên duşemb, sêşemb û çarşembê, duhî jî radyoyên elemanî weşînekên xwe zehf caran sekinandine.

CEZAYIR — Komîta frensizî a xelasiya welêt îro çivanek danî.

## BALAFIRHILGIRA EMERÎKANÎ

**Xesarine Dijwar Gihandine Qiwetên Japon**

WEŞINGTON — Balafirhilgira emerîkanî ya ko arîkariya şerên girawa Gilbertê dikir 34 nêçîrvan û 12 bombeavêjên japonî anîne xwar.

Çung-King — Di şerê bajarê Sangtehê de 5000 kuştiyên japonî li erdê mane.

NÛ-YORK — Giravên jilbertê bi timamî ketine destê qiwetên emerîkanî; piştî çar rojên şerî zora japona bi timamî hatiye birin.

LONDRE— Duhî bi ro bombeavêjên emerîkanî, kelehên firok ji nû ve dirêjî Sofiyayê û hêjagehên rêhesin û yên erd û payetextê Bilxaristanê kirine û xesarine dijwar gihandine armancan. Ev cara diwemîn e ko Sofiye têtê bombardiman kirin.

MELBURN— Qiwetên ewistralî di Nû-gîneyê de li bakurê Satelbergê zehf bilindaliyine hêja standine.

## Qewil û Ayîn

### Qewilê Şêx Şahbedîn

Hay felekê, sed car hawar felekê,
Hawar dikim tu dey nakî
Hay felekê, sed car felekê.
Ehlê romê li hev civiyane
Xwendin fermana seyidane.
Dayika Şêxa tu bilezîne
Xurca zêra bi xwe r' hilîne
Her stembolê li têla xîne;
Têla li ser têla tu bişîne,
Hedîkê ji waliyê re bişîne;
Belkî hefwa mala Xewis bînê;
Van seyida ne şeniqîne.
Ez çûm Bedlîsê gelî bi gelî
Jê derxistin cotik welî
Girtin şex Şahbedîd Seyid Helî.
Dara xaziyê di devê rê da,
Şêx Şabedîn seyid Helî
Avêt bi darê de.
Şerîf qetiya ji alî Xwedê de
Xîret ne ma di Îslamê de,
Hey felekê, sed car felekê.

### QEWILÊ SEFERBERLIKÊ

Hay hoy li min hewarê
Seferekê li me rabû
Çi seferekê giran e
Kesekî ev sefer ne dî
Jiçaxa Heliyê Heyinder de.
Hay hoy li min hewarê
Gola xwênê kûr e
Nade qamê..
Xwîn ji kurê bava dikişîn
Nala çem û kaniya
Birîndara hewar dikir
Hekîm bînin dermana.
Dermanê van brîndara
Xaliq rebê rehman e.
Birîndara hewar dikir
Textor bînin dermanan
Bi çeplê van kurika digirtin
Avêtin xestexana;
Ev textor xain derketin
Jar xistin di nav dermana;
Heyfa van xorta
Di xestexana zelûl mana
Destê van kuran
ji dê û bava qetiyana;
Simbêlê sor û zer
Di bin axê de riziyana;
Dilekî min hevdalê
Behra tenik e
Ehmed Mixtar paşa
Girêda gemî, qeyike
Siltan Mihemed Reşad
Qeland toximê lawikan
Sultan Ebdil Hemîd
Te her xortekî difirot
Da bi bertîl û rişweta.
Ez diçûm Wêran Şa'rê
Bi kevirê reş e
Te li Kurdistan kiri bû
Çekê reş e.
Kurdistan xeşîm e, bi talîma
Borîyê nizane;
Ez çûm Wêran Şa'rê bi qar
û qîş e
Heskerê Mihemed Reşad
Li bextê te ma êrîşe;
Te li dexta Hewran
gawir kir du tîş e.

### CIVANÊ RUZWELT—ÇORCIL—ÇANGKEYÇEK

QAHIRE — Bi awakî resmî di zanîn ko Serekcimhûr Rûzwelt, wezîrê Brîtanya Mezin Mr. Çorçîl û Mareşal Çang keyçek di Efrîqa Bakurî de civanek danîne.

Têtê bowerkirin ko bi hazirîya Mareşal Stalîn li Iranê civanekî din çibibe.

LONDRE — Refên brîtanî û emerîkanî di nav 11 mehên vê salê de 125 hezar ton bombe avêtine Germanistanê.

# DEMA NIHA

## ROZWELT-ÇORÇIL-STALIN

HER SÊ MIROVDEWLETAN LI TEHRANÊ CIVANAK DANÎN

MOSKÛ— Radyoa Moskovayê dide zanîn; Berî çend rojan Mr. Rûzwelt, Stalîn û Çorçil di Tehranê de civanek danîn, nimîne-deyên eskerî û diplomasî ketine vî civanî. Di vî civanî de qala şerê zidê elemana û pirsên siyasî hatine kirin. Qerarên ko hatine dayîn piştre dêbêne belav kirin.

## ORDIYA BRITANI

### 8 XETÈN ELEMANA ŞKÉNANDINE

CEZAYIR— Ordiya brîtanî heşt piştî du şerên xurt û xwînd·r zora elemana biriye, 3 bajar vegirtine û ber bi bakurî ve pêş ve [illegible]

LONDRE— Di ser Şerburgê re refên brîtanî 10 balafirên dijmina xira kirin.

LONDRE— Wezîrê nazî ê propagandan Dr. Gobels di kovara elemanî das Reyix de dinivîse: di şerekî de jor û jêr hene, demên çak û neçak. Lê miletê ko aleke spî ne xistiye berika xwe tu car pê emel nake. Tiştê ko divê emê bêjin ev e: em xwe tucaran navêjin bextê dijminên xwe.

## BENDA M. SUMNER WELLES

### Bi Tevkariya Hemî Miletên Hevalbend

WEŞINGTON— Mr. Sumner Welles yê ko berî wextekî cihgirtinê Wezîrê emerîkanî ê dervekariyê bû, 11 ser bi dervehiştina Frensê û hin miletên din ji Civanên Dewletên Mezin bendek nivîsandiye, benda ko di 30 rojnameyên emerîkanî de hatiye çapkirin. Ew têde dibêje: Miletên din ditirsin ko Brîtanya Mezin, Emerîka û Rûsya ji xwe re wê bikin adet û karên cihanê bê pirskirina fikra miletên din pêk bînin û rojekê ew miletên civanketî bibînin ko li ser hin tiştan qerarine welî hatine dayîn ko li gora wan ne bikêrî danîna silh û aşîtiya dinyayê ên. Divê bête hêvî kirin ko di civanê Serekdewletên Rûsye, Brîtanya Mezin, Emerîka û Çînê de li ser vê pirsê qerarek wê bête dayîn û hemî miletên Hevalbend wê bizanin ko di pirsa danîna silh û aşîtiya cihanê di dengê wan jî dêbête bihistin. Ma rast e mirov bawer bike ko miletê Frensiz û miletên din yên erdên vegirtî, ko roja serbestkirina welatê wan hat û ew bûn xwediyê hikim bê dev vekirin bi qerarên ko bê haziriya wan hatine dayîn û bi peşî, rahetî û heq û hikimraniya wan girêdayî ne qîma xwe bînin û bêjin erê. Mr. Sumner Welles dawiya benda xwe de qerarên girane ko her çar Dewletên Mezin bi serê xwe distînin neçak dibîne û protestan dike.

LONDRE — Nûçegihayê ejensa Roylerî ji Lizbonê dide zanîn; Xelk zehf qala peyivên ko li ser qedandina şerî çêbûne dikin û dibêjin ko wezîrê elemanî ê dervekariyê von Ribentrop du cara hatiye payetextê Portixalê.

Li Portixalê tête bawer kirin rewişa şerî pêş çavan dike ko wextê da nîna Ewripaye nû, gelek nîzing bûye.

## DÉRAN

Dêran.. dêran!..
Ez dêrana siwarê Xemlo me
Kejikê wêran ketim ber bi bayê
Ez bala xwe didimê, sê siwar jêr
de tên xuya yê
Ez bala xwe didimê wan siwara ye
Siwarê pêşî, jê re dibêjin Riza ye
Ê bi dû de Eshedê bira ye
Ê taliyê qerecizmake reş li piya ye
Û qapûtekî reş li mila ye.
Riza ban dikirê digot: Eshed bira
Tengala vê kozikê bermede
Mêrê mêrxas be, tembiya min li te be
Xwe me de li ser kozika Gêrê
Tê de hene, gawirê şefqe kirî
Û hirçê bi birîn.
Mêrê çê be, emê hilînin heyfa
Ekremê birayê...
Emê herin Wefayê
Emê çi bidin cewaba apê xwe
vî Mistefayê...
Keko, wê êlê ji hev belav bê;
Êl bê sermiyantî na bê.
Ez bi Kejikê wêran ketim bi genek e;
Şade şihûdê mala kêfir gelek hene
Dakevin meydanê
Siwar bi siwar, lek bi lekê.
Riza bi sê denga ban dikirê
Eshed kekê,
Tenbiya min li te bê, xwe
me de ser kozika Gêrê
Têde heye beranê şefqekîrî
Hriçê bi birîn.

## Qewilê Mala Bûbê

Eman yar û meded
Ya Geylanî !...
Hewar dikim tu deyin
na kî,
Qedrê Mihemed Mistefa kî,
Eman yar û meded
ya Geylanî !...
Sê siwar hatin; min
pirsî:
Ev siwar ji mala
kê ne
Her sê siwar ji mala
Bûbê ne.
Siwarê pêşî Sîno Seydoş e
Siwarê navê Mehê Lawîn e
Siwarê talî seyid Refahî ye.
Eman yar û meded
ya Geylanî.
Ez derwêş im, derwêşkî
dîn im.
Ez ewladê Bûbû Sîn im,
Eman kalo, ez derwêşê
te me,
Heya tu sax bî ez
mirîdê te me,
Ez li ser bext û toba
şêxê xwe me.
Eman kalo, sê sîwar hatin
Min li van siwara pirsî:
Her sê siwar ji mala
kê ne ?
Her sê siwar ricalê xeybê ne.
Ser rimê van siwara
li herşê Xwedê ne
Kunrimê van siwara
Li tebekê erdê ne.
Şûrê van siwara safî
ji berqê ne.
Libsê van siwara safî
ji nûrê ne,
Eman, yar û meded
ya Geylanî !...
Ewladê Mala Bûbê zor
qehirîn !....

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

Xebat - Fidakarî - Serfirazî - erdestî



Eniya Talvani: Piştî Agirên Topên Brîtanî ê Xurt Zora Dijmina Hatiye Birin û Li Her Derê Yekîneyên Ordiya Heşt Pêş Ve Ketine.



Civatmiletê Brîtanî, Avahîyeke Kubar û Bi Heybet.



Zirehpûşên Brîtanî: Stola Brîtanî Behra Spî Ji Dijmina Paqij Kiriye û Niho Çeper û Penahên Elemana Yên Peravên Italyayê Dide Ber Gullan.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIR D'ORIENT

Sal 1 — Hejmar 32

# ROJA NÛ

Duşemb 27 Kanûna Pêşîn 1943

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê: 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

## DEWRAN

ŞERÊ NOQAVAN

### Telegrafekê Dida Zanîn

Ko Hitler banî Emîral Doenitz kiriye, serfermandarê Stola Elemanî. Doenitz digote Hitler ko noqav dikarin qefleyên Havalbendan der Etlentîkê û li Behrên dinyayê ên din, binav bikin, axatiya behran bêxin destê elemana û pê xelkê Brîtanya Mezin ji nêz û birçîna bimirînin.

### Emîral Rîder Yê Ko

Berî Doenitz serdariya Stola elemanî dikir, baweriya xwe bi gotinên Doenitz ne dianî, wî dixwest Germanistan ji xwe re cengkeştiyine mezin, stoleke xurt ava bike ji zirehpûş, qriwazorên giran û sivik, ji bertorpiyor û balafirhilgiran bi hevketî. Dawî tiştê ko Doenitz digot ket serê Hitler, Emîral Rîder ji serdariya Stola Elemanî hatiye rakirin û Doenitz cihê wî girt, bû Serfermandarê vê Stolê; zehf noqav dan çêkirin û bi xurtiyeke ecêb dest bi şerê qefleyên Hevalbendan kirin.

### Doenitz Kî Ye ?

Doenitz di şerê cihanê ê 1941-1918-an de komandanê noqava eleman «U. 68» bû û Behra Spî de direjî qeflewaporên Hevalbendan dikir. Rojekê gava dîsa êrîşî gemiyeke brîtanî dikir, ji bêgaviye noqava wî hat ruyê behrê û tevî deryavanan hatiye hêsir kirin. Ingilîza ev xistin girtîgehekê û diviya bû heta dawiya şerî têde bimîne.

Lê Doenitz xwe kir dîn, diktor xapandin û gava nesax û brîndarên her du aliyên şerevanî dihatin gohartin, Doenitz jî bi nesayên giran ve vegeriyaye Germanistanê. Doenitz dizanî bû ko şerê mezin î kevin de noqavên elemanî xelkê Brîtanya Mezin xisti bûn bêgaviyê û Ingilistan nîzingî perîşaniyeke mezin de bû; û li gora texmînên Doenitz stoleke mezin ji noqavan bi hevketî di vî şerî de, wê bikariya zora ingilîza bibe.

Rast e ko noqavên elemanî di vî şerî de jî xesarine giran gihandine Hevalbendan, lê dawî Emîraliya Brîtanî bi tedbîrine xurt zora noqavên elemanî birin, her wekî Mr. Çorçil û Emîral Keningham bi awakî resmî elam dane.

### Pêşiya vî Halî de

Çire Hitler banî Doenitz kiriye aşikar e.

Anîna Doenitz Serfermandariya stola elemanî xeletek bû. Ji xwe xeletên ko Hitler pey hev û du kirine, Germanistan gihandiye, devê kortalekê.

### Xeleta Hitler

A pêşîn ev bû ko piştî şkênendina Frensê, di cih de direjî Ingilistanê ne kir; û baweriya xwe anî ko bi bombardimanên hewayî dikare zora Britanya Mezin bistîne. Xeleta wî a diwemîn ev bû ko direjî Sovyetistanê kir, wî qîma xwe bi tiştên ko di bihîst anî û ji xwe re got: Sovyetistan pêşiya çend derbên xurt de wê biheze; wî seh ne kiri bû ko miletên Sovyetistanê bi hikûmeta xwe qail in û dora wê de tibevciviyane. Ya sewemîn ev bû ko Hitler bawer dikir Emerîka na keve vî şerî. A çaremîn Hitler yeqîn dikir ko di welatên Ewripa vegirtî de, heke çend bêbext xwe firotin elemana û bi destê wan hikûmet hatine danîn, ev hikûmetên he dikarin xelkê bimeşînin û dora Germanistanê de kom bikin. Îro bi hêjmareke girover 1.600 roj in ev şerê xedar dom dike. Ev şer bi êrîşa Polonyayê destpê kir, li 1939 an. Elemana xwe avêtine ser Polonyayê, miletê ko ji elemana zehf biçûktir e û çak neçek-kirî bû.

Îro di pêşiya Germanistanê de dewletên dinyayê ên xurt û mezintir gihane hev û du û zor didin wê. Di pêşiya vî halî de Hitler dike wextê bike pêgirtiyê xwe. Xeleteke din.

## BOMBARDINANÊN DIJWAR

### Bremen-Frenkfurt-Manheyim Di Bin Bomban De

LONDRE— Refên brîtanî ên xurt bi ser axa Germanistanê de girtine û li bajarên Frenkfurt, Manheyim û Ludwigshafinê xistine û bombeyên şewat û teqandinê, bi hezaran berdane hêjagehên wan bajaran. Perîşaniya elemana mezin e.

LONDRE— Refên Emerîkanî bajarê elemanî Bremen bombardiman kirine û 1.200 ton bombe avêtine vî bajarî.

MOSKÛ— Ordiya Sor ber bi Nevel û Korostenê ve pêş ve diçe.

## Gotara MONTBATIN

### Heta Ko Bikevin Bextê Hevalbendan

NÛ—DELHÎ— Emîral Lord Luî Montbatin di eniya Arakanê de çavê xwe li leşkeran gerandiye û bi wan re peyiviye û gotiye wan: ko carekî dema şerê Japona hat, ev şer bilez pêş ve here. Me berî qesda talyana kir, ew şikiyane. Niho dora elamana ye, piştî ko zora wan jî çû, dora japona wê bê û şer heta ko Japon bikevin bextê me wê dom bike.

LONDRE— Wezareta brîtanî a hewayî dide zanîn: refên brîtan di behra peravên Bretanyê de, bi ser qeflewaporeke dijmin de girtiye û lêxistiye, derb li zehf gemiyan ketine, berkêşek yekcar xira bûye. Bombeavêjên Tîfon hêjagehên erdê Holendê û Frense Bekurî bombardiman kirine.

## KELATA KIYEVÊ

### BEDENEKE XURT

Berî sih rojan elemana bi qesda vegirtina Kievê dest bi êrîşan kirî bûn. Şerê ko di vê erdê de çêdibe şerekî no ye.. Ji wextê şerê Stalîngrndê û heta îro qomandeke wilo çênebûye. Von Manşteyin, serdarê elemanî, du hezar tangên xwe anîn û xistin şerî, û dixwest bi vê cehdê tiştekî wilo pêk bîne ko xelk lê ecêbmayî bimînin. Lê Ordiya Sor di vê eniyê de jî birha ordiyên elemana şkênand û girtin û berdan xist destê xwe; û agirê topên Ordiya Sor ê xurt riya tangên elemana girtiye û xesarên elemana di vê eniyê de hindê giran in ko bi vê ne vê mirov ji xwe dipirse piştî vê derbê gelo eleman wê bikarin li ser linga bisekinin. Di warê çekên hewayî de jî halê elemana bêhêvî û niyaz e.

LONDRE: Di bombardimana Emdenê de 700 bombeavêjên emerîkanî bi ser vî bajarî de girti bûn, balafirvanên emerîkanî 43 mekîneyên elemanî anîne xwar, xesarên hevalbendan 20 mekîne bûn.

## KARXANEYÊN KENADÎ

### Bi Piranî Çek û Posatan Çêdikin

OTTAWA— Wezareta Kenadî a şerî dide zanîn: di nav du salên dawîn de karxane û febrîqeyên Kenadî 7.400 balafir, 372. hezar kemyon, 950 000 mitralyoz, 4.500.000 gulle û 409 wapor, korvet û ber torpiyor çêkirine.

MOSKÛ— Pêşekarê Ejensa Rûsî Tass dide zanîn ko di nav panzde rojên vê mehê ên pêşîn de 800 tangên elemanî hatine xira kirin.

MOSKÛ— 380 hezar lekanvanên rûsî di axa Kalîninê de, li bakur-roavayê Moskovayê, ji bona şerê zivistanê talîman dikin.

CEZAYIR— Duhî serê sibehê Komîte Erensizî a serbestkirina welêt, di bin sermiyaniya General De Gol de civanek danî, mijûlahiya civanî sê saetan dom kiriye.

## Bêbextiya Japona

Berî du salan, li 7—ê Kanûna pêşîn 1941-ê, bû ko Japona bi bêbextî li Pîrl Harborê direjî Emerîkayê kirine, û di wan rojan de diplomatên japonî bi selahiyetine mezin payekirî, di Weşingtonê de rûdiniştin û Hikûmeta Emerîkayê bi axaftinên li ser Ehidnameke Dostaniyê dixapandin. Tokyoyê carekedin bi awayê ko gava qiwetên Japonî di 1894-an de direjî Çînî û li 1904-an êrîşî Rûsyayê kirî bûn, emel kiri ye.

Le şkerperestên Japonî baweriya xwe dianîn ko elemana zora Brîtanya Mezin biriye, Emerîkayê jî, ji bona şerî, xwe kar ne kiriye û dema zefer û serfiraziyine sivik hatiye. Japona ji aliyê din dixwestin stolên hevalbenda bikin du bir û pê wan qels bêxin û bernedin ko Emerîka û domînyonên brîtanî mîna Kenada Ewistralya zad û zexîre û çek û posatan bişînin Ewripayê. Bêbextiya wan, mîna her bêbextiyê, di destpêkê de bikêrî wan hat û Japona xesarine dijwar gihandine stola Emerîkanî û Brîtanî; û Pesifîkê de û li welatên Rohelatê Dûr erdine mezin û hêja vegirtine. Di vê wextê de, li dema vî şerî a girantir, noqavên Hitler, ji her wextî bêtir direjî qeflewaporên Hevalbendan dikirin û di behrên dinyayê de çûn û hatin hin bi hin zehmetdar dibû.

Li wê wextê di Emerîkayê de hina digotin ko Japon direjî erdê Emerîkayê bike û ji hikûmeta xwe dixwestin ko ew dest ji şiyandina zad û zexîre û çek û posatan Brîtanya Mezin û Eniya Ewripayê re bikişîne û qiwetên Emerîkayê li Pesifîkê kom bike. Ji xwe tiştê ko elemana dixwest ev bû; lê Serek Rûzwelt guh ne da wan gotina û ne ketiye dava dijminên xwe û qail bû ko ji bona wextekî, di Rohelatê Dûr de erdine hêja bikevin destê Japona, her wekî Serekwezîr Çorçil firqeyeke brîtanî a zirhkirî ko li ber dest bû, şiyandiye Misrê, her çend jî giravên Brîtanya Mezin bixwe di pêşiya talûka êrîşeke elemanî de bûn, ji ber ko her du mirovdewletan bergehên xwe û rewişa şerî bi tevayî û kûr û dûr didîtin. Çavsoriyeke wilo diviya bû berên xwe bide, û birastî di karê çêkirina waporkarkêş û cengkeştiyan; top, tang û balafiran de û der şkênandina noqavên elemanî de dewletên Englo—Sekson serfiraz bûne. Êdî serbestî û selametiya behrên dinyayê bi awakî birinî hatiye pêk anîn û di van rojan de sê qeflewaporên Hevalbenda bê zerer û xesar li Etlentîkê derbaz bûne û gihane benderên Ewripayê; û ew pêşiya êrîşên ko êdî noqavên elemanî de, êrîşên ko êdî nebikêrhatî ne. Çekê hevalbendan şeş noqav binav kirine û xesar gihandine 9 hebên din. Ev du sal in Emerîka têkilî şerî bûye û niho Japon jî mîna elemana ketine der

# DEMA NIHA

## SER SAL — 1944

### Sala We a Nuh Prîoz Be Xwendevanên Delal

Hêviya me ev e ko bi kerem û destûra Xwedê sala 1944-an wê bibe sala azahî û serbestiya hemî miletên cihanê û yê me.

Pêrûziyên Sersalê:

Serê salê binê salê, Xwedê bihêle malxweyê malê. Serê salê binê salê Xwedê bihêle hûr û girê malê. Serê dîkê bi kulav e, Xwedê malxweyê malê bike zava «hin kebanî hene ko li ser vê gotina zoroka diqewirînin, tiştekî nadine wan.»

Hincik, mincik, Xwedê bihêle ewê kuncik.

MOSKÛ— Rojnameyên rûsî Izvestiya û Pravda qala strana Sovyetistanê a nû dikin û dibêjin: Strana nû boriya miletê me a bi şan û heydedan, halê wî ê egîd û qehriman û pêşiya miletê me a ronak û bilind tîne pêş çavan. Miletên Sovyetistanê bi dostaniyeke germ pev re girêdayî ne, dostaniya ko di qadên şerî de û bi xwîna ko pev re hatine rijandin xurt û qaim e. Em bi hêviyeke qewî li pêşiya xwe dinêrin.

MOSKÛ— Serekê Çekoslovakyayê Dr. Benes xwe ji Moskovayê hilaniye.

ZURIX— Gazeta Lozanê li gora nuçeyên ko ji Budapestayê jê re hatiye dibêje ko Romel bûye serfermandarê Ordiya elemanî.

## SILEH, SILEHÊN NUH

### Rast an Ne Rast Bikêrî Propagendan tên

LONDRE— Rojnameyên ingilîzî qala silehên veşartî ko elemana çêkirine dikin. Deylî Ekis Pres dinivîse: li gora gotina zabitekî, eleman bi gulleyine nû, her yek ji wan 15 ton giran, bajarê Lênîngradê bombardiman dikin.

Ev gulleyên he 150 kilomêtir dûr diherin. Eleman ji aliyê din silehekî nû cêdikin: yê ko dikare awayê şerkirinê biguhêre. Lê Hevalbenda eleman bi çî mijûl in dizanin û dizanin ko di peravên Manşê de eleman bedena ava dikin ji bona danîna top û hesincawên ko gulleyine mezin dikarin bavêjin. Lê gulleyên ko têne avêtin Lênîngradê bermeqlûb diçin, li armanca na kevin û eleman cehda xwe dikin da ko topên wan rast bavêje. Ji aliyê din têtе sehkirin ko eleman bombeyine giran çêkirine ko bi sihvana tên xwar û ko Hevalbendan dest bi êrîşa axa Ewripayê kirin, ew bi wan bomban emel bikin.

Jê pêve têtе bihistin ko elemana balafireke nû çêkiriye, ya ko dikare 17.000 mêtir bilind bibe. Berî bi çend rojan dihate gotin ko elemana gulleke din çêkirine û gava ev gulle diteqe dora wê de—dera pehniya 200 mêtiran — hewa ko em pê bihna xwe dibin û dijîn xira dibe

Di Ewripayê de xelk zehf qala çek û silehên nû dikin, rastî çawa ye, hîn bi timamî ne kifş e. Lê belê tiştê kifş û rast ev e ko silehên nû hene lê derewa bi ser ve zêde dikin û piraniya wan çek û silehan ne di karxane û febrîqeyên elemanî de, lê li wezareta elemanî a propagandan têne çekirin; wezareta ko sermiyanê wê Goebels e, û qesda wê şkênandina çavê xelkê û çavtirsiyandî kirina wan e.

## PÊNC HEZAR TON

### Bombeyên Şe..at û Teqandine

LONDRE— Hefta borî refên brîtanî û emerîkanî 5.000 ton bombe avêtine bajarên elemanî.

CEZAYIR— Ordiya brîtanî heşt di..eniya talyanî de Bezanî standiye.

— 2 —

dê parastina xwe, berevaniya heyîna xwe. Dewra êrîş û standina welatan ji wan çû ye.

Gohartina rewişa şerî û giranbûna tasa şehînê ber bi Hevalbendan ve, pişta miletên Ewripayê ên biçûk û çavtirsiyandî jî xurt dike. Portixal bi dayîna warên xwe ên behrî û yên qiwetên hewayî li giravên Asorê destê Hevalbendan, û protestanameya ko bi hênceta girtina şagirtên Dibistanên payetextê Norvecistanê, Sveçistanê rekiriye elemana, xweş xuya dikin dilê wan milêtan ber bi kê ve ye.

Dema ko eleman çavsorî li miletên dinyayê dikirin bi timamî boriye û ew niho hisabê êrîşên giran û mezin yên ko di pêşiyê de ne dikin û her wekî danezana Tehranê a her sê Serekdewletan digot, tu qiweta dinyayê êdî nikare elemana ji destê Hevalbendan xelas bike.

### DANEZAN

MELBURN— Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîka Bakurî dide zanîn: Di axa Arawayê de der Nû-Bretanyê, çeper û penahên nû vegirtî, hatine qaim kirin. 12 bombeavêj û 4 nêçîrvanên Japonî yên ko dikirin direjî waporan bikin hatine anîn xwar. Di avên Nû-Irlandayê de, qiwetên me gemiyên Japona dane ber derbên xwe, bombe li 2 hebên wan ketine, yek ji wan bin av bûye. Waporeke eskerkeş jî hetiye xeriqandin. 90 mîl bakurê girava Nasawê de refên me xesar gihandine destriyoreke Japonî; û gemiyeke peravparêz xeriqandine; û 750 ton bombe avêtine balafirgeha pozê Glosesterê.

CEZAYIR— Di Ortanayê de şerine zexm û xedar çêdibin; û eleman bi sihvanvana têne gaziya qiwetên xwe, ji ber ko ew dizanin heke li Ortanayê şikiyane, riya Peskariyê di pêşiya Ordiya heştemînde dê vebe.

## PÊJINÊN DINYAYÊ

### CENG & BIHINGEH



JI BERGEHÊN BAJAREKÎ ÇELENG



Şanzelîze, Şehreya Parîsê a Bi Nav û Deng.

## Du sed Hezar Ton Bombe

LONDRE— Ji destpêka şerî û heta îro du sed hezar ton bombe hatine avêtin hêjagehên Germanistanê: 42 mehên vî şerî ên pêşîn de sed hezar heft mehên vê salê ên paşîn de sed hezar ton bombe hatine berdan bajar û şaristanên elemana. Giraniya bombeyên ko bi destê refên emerîkani û bi ro hatine avêtin ne têde ne.

Weşington— Vê mehê febrîqeyên emerîkanî ji deh hezarî bêtir balafir çêkirine. Îsal balafirên ko ji karxaneyên emerîkanî derketine 144 hezar in û heta şkênandina qiwetên Mihwerê, ew febrîqeyên he her sal 144 hezar nêçirvan û bombeavêjan çêkin.

LONDRE— Sevêçûyî di Londrê de işareta talûkê hatiye dayîn, lê tu tişt ne qewimiye.

MOSKÛ— Mareşal Stalîn û Serekcimhûrê Çekoslovakyayê Dr. Benes bi rûkalî hev ketine.

1ère ANNÉE LUNDI 27 DÉCEMBRE 1943 NUMERO 32

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Les dépêches successives qui nous parviennent de tous les coins du monde donnent l'impression que tout, est à feu et à sang partout.

La R.A.F. et les bombardiers lourds de la 8ème Armée de l'air américaine se relayent inlassablement au-dessus des principales villes allemandes. Les raids au cours desquels plus de 1.000 tonnes de bombes sont déversées sur les objectifs ennemis sont suivis d'autres raids comportant 1.500 ou 2.000 tonnes de bombes.

Après Berlin c'est Breme, puis Berlin encore et Mannheim—Ludwigshafen, 2.000 tonnes d'explosifs sont lâchés sur Francfort.

La propagande allemande, impuissante à cacher les faits, non seulement autorise, mais encourage la publication de détails relatifs à ces „raids de terreur» alliés pour conclure que le moral de la population demeure malgré tout ferme et résolu et que ces bombardements ne parviendront pas à l'ébranler. Mais où sont donc les représailles de la Luftwaffe, si souvent promises par la propagande allemande.

En Russie, l'Armée Rouge déclanche une nouvelle offensive au sud de Nevel. La neige et la glace ont déjà fait leur apparition et des milliers de tanks peints en blanc sont actuellement en route vers le front. 400.000 skieurs parfaitement entrainés attendent, non loin de Moscou, d'être dirigés sur le point du front où le Haut—Commandement Soviétique décidera de lancer la grande offensive d'hiver.

Dans le secteur méridional du front, à l'ouest de Kiev, Von Manstein a en vain jeté dans la mêlée ses dernières réserves. Sur 2.000 tanks, mis en ligne par la Wehrmacht, près de la moitié est déja hors d'action. Selon certaines rumeurs, le général allemand aurait été menacé par Hitler des pires désastres s'il ne parvenait pas à reprendre Kiev pour redonner un peu de prestige à la Wehrmacht. Mais déja, la poussée allemande est à bout de course, et les forces soviétiques ayant reçu des renforts regagnent pas à pas le terrain qu'elles avaient provisoirement cédé.

En Italie, malgré le mauvais temps et les difficultés du terrain les troupes alliées poursuivent leur avance et enlèvent une à une les positions de la ligne d'hiver allemande, installées géneralement au sommet de crêtes inaccessibles.

Pendant huit jours, sans arrêt, Canadiens et Néo-Zélandais se sont lancés à l'attaque des lignes ennemies sur le Moro et dans le secteur central. Selon son habitude, le Général Montgomery a toujours fait précéder les attaques de son infanterie par une préparation d'artillerie des plus formidables: plus de cent milles coups de canons ont été tirés en l'espace de 2 heures seulement, et après une courte pause, ce terrifiant barrage d'artillerie reprenait encore pour une heure 45 minutes!

Des unités françaises coopèrent déjà avec les troupes américaines sur l'aile droite de la 5ème Armée. Les Français, qui brûlent du désir de se battre, ont fait merveille au cours des derniers combats. Ils opèrent dans le secteur du front où le terrain est le plus difficile, dans des ravins et sur des escarpements rocheux se trouvant sous le feu des mitrailleuses allemandes. En dépit de toutes les difficultés, les Français gagnent du terrain et ont déja fait un certain nombre de prisonniers.

Dans le Pacifique, et en Extrême Orient, on assiste à une offensive générale de la part des Alliés, et les Japonais sont, partout, contraints à reculer.

En Nouvelle Guinée, les troupes australiennes pourchassent littéralement de petits groupes ennemis à travers la jungle.. Dans l'île de Bougainville, les Américains ont élargi leur tête de pont et aménagé une nouvelle base aérienne qui permet déjà de bombarder les positions ennemies de Rabaul, de 4 directions différentes. Un autre débarquement a été effectué avec succes en Nouvelle Bretagne même.

En Birmanie, les troupes impériales sont à la veille de reprendre aux Japonais les territoires qu'elles avaient évacués en Mai dernier. L'aviation américaine bombarde Hong Kong, Hanoi et Bangkok et les troupes du Maréchal Tchang Kai Chek refoulent les Japonais dans la région du Lac Tung Ting.

De tous les pays d'Europe, de la Norvege jusqu'aux Balkans, parviennent des informations relatives à des actes de sabotage et à des attentats contre des militaires allemands. La Bulgarie, la Hongrie, la Roumanie voudraient bien se détacher de l'Axe et la Finlande fait presque ouvertement des propositions de paix.

Le Reich qui a été seul à vouloir, à préparer et à déclencher cette guerre, est maintenant seul devant la défaite. T. H.

## Le Bombardier Moderne

Le bombardement aérien est devenu un des plus puissants moyens de destructionts des forces adverses. Non seulement l'avion intervient dans la bataille terrestre ou navale mais il détruit les centres industriels vitaux. Il permet de porter la guerre en plein coeur des territoires ennemis. Des bombardements répétés par plusieurs centaines d'avions à la fois, lançant à chaque raid mille sinon deux mille tonnes de bombes explosives et incendiairas, ont pratiquément détruit d'immense viiles telles que Berlin, Hambourg, Brême, Cologne, Essen... au milieu des ruines desquelles se trouvent les débris de centaines d'usines de fabriquations de guerre maintenant inutilisables



L'avion de bombardement appartient à de nombreux types. Les plus puissants sont connus au moins de nom puisqu'il en est constamment question dans la presse;

Forteresses volantes et Liberators, Stirlings, Halifaxes, Lan-Casters, tous à 4 moteurs de 1200 à 1.600 c. v. Il existe aussi en service d'autres modèles bimoteurs : Marauder, Mitchell, Mosquito, mais les premiers constituent ce qui a été réalisé en serie de plus formidable jusqu'à présent ; ce sont donc les plus interessants à étudier.

Ces grands bombardiers sont tous des monoplans de 30 mètres et plus d'envergure pesant en pleine charge de 28 à 35 tonnes. Ce dernier poids est celui du Short Sterling britannique à 4 moteurs de 1.600 c.v. et qui peut emporter 8 tonnes de bombes sur des parcours moyens.

Les 4 moteurs sont fixés en ligne à l'avant (bord d'attaque) de l'aile. Les 2 fuseaux moteurs les plus rapprochés du fuselage sont assez volumineux pour renfermer en vol les énormes roues du train d'atterissage, et dont le diamètre mesure environ 1m. 80..

Le fuselage est particulièrement volumineux. Long de 22 à 24 mètres suivant les types, il comprend de l'avant l'arrière:

— une tourelle vitrée à 2 ou 4 mitrailleuses.

— le poste de pilotage et celui du bombardier puis sous un couloir desservant les postes du commandant de bord, du radiotélégraphiste, et la tourelle supérieure, une énorme soute à bombes contenant des projectiles de tous calibres, les plus gros pouvant être des bombes de 2 tonnes et même de grands cylindres remplis d'explosif puissant et pesant 8.000 livres (3.600 kilogrammes).

— en queue de fuselage, en arrière des gouvernails, une tourelle à 2 ou 4 mitrailleuses.

Une petite tourelle à 2 mitrailleuses est en outre placée sous le fuselage en arrière de la soute à bombes.

Il est à noter que presque tous les réservoirs d'essence sont placés dans l'aile.

L'équipage est de 8 ou 9 hommes.

L'armement défensif des bombardiers est considérable ; les appareils britanniques possèdent en général 10 mitrailleuses légères en une tourelle avant et une tourelle arrière (aux extremités du fuselage) une tourelle supérieure et une inférieure.

Les fameuses «Forteresses volantes» Boeing B - 17 E sont encore mieux défendues avec 13 mitrailleuses lourdes de 12 1/2 7 reparties en plusieurs points du fuselage de manière à ne laisser aucun angle mort pour l'attaque.

La protection des bombardiers est également assurée par des blindages : 500 kilos sur le Halifax.

Mais, toute la raison d'être du bombardier est sur son équipement offensif, c'est à dire ses bombes. Le Lancaster et le Stirling peuvent en transporter jusqu'à 8 tonnes, mais cette charge doit être réduite au profit de l'essence pour les missions à grande distance. Pour la plupart des raids au-dessus de l'Allemage ces grands quadrimoteurs ne transportent ainsi que 3 tonnes de bombes...ce qui est déjà beaucoup, à la vitesse *moyenne* de 360 kilomètres heure.

Les forteresses volantes Boeing transportent moins de bombes encore, souvent 2 tonnes seulement. C'est que ces avions volent à très haute altitude, 8.000 à 9.000 mètres et doivent donc être allégés pour leur puissance (4 800cv) et aussi qu'ils emportent un poids enorme de munitions pour leurs grosses mitrailleuses : plus de 1 tonne.

C'est à ce prix seulement que les forteresses volantes peuvent effectuer des raids de jour et affronter les chasseurs d'interception.

Pour éviter ces mêmes chasseurs les bombardiers légers Mosquito, britanniques comptent sur leur vitesse : environ 600 km. à pleine puissance, et sur leur maniabilité — Ils effectuent ainsi des raids surprise en emportant au maximum 4 bombes de 225 K

Les premiers bombardiers Mosquitos n'étaient pas armes. Actuellement, ils possèdent à la fois canons legers et bombes.

Pour l'offensive aérienne de 1944 les Alliés vont disposer d'avions particuliérement puissants, pour la plupart à 4 moteurs de 2.500 cv. nouvelle Forteresse volante B. 29, nouveau Liberator B 32.. Ils emporteront plus de bombes que les précedents et surtout seront souvent plus rapides et armés de canons. Aucun centre vital ennemi ne sera à l'abri de leurs attaques, non seulement parce qu'ils pourront aller plus loin mais surtout en raison de la puissance de leur armement defensif qui leur permettra de voyager sans escorte de chasseurs dont le rayon d'action est très limité.

---

*Londres— (A.F.I.) Des unités de la «Home Fleet» sous le commandement de l'Amiral Bruce Fraser, escortant un convoi a destination de la Russie, a forcé dans l'aprés-midi du 26 Décembre, le cuirassé allemand* **«SCH[illegible]»** *à engager le combat. Le* **«SCHARNHORST»** *a été coulé dans la soirée au large du Cap Nord.*

**Strana Kurdî**

# MERYEMA ELO GERGERI

Yar yar yar yarî.

Heger Meyremê te konê bavê şewityê ; feratê bunyanê poxelê ke lê hecî Kayîn Begê bi şewite li hewa

Je êvara xwedê da lê tê şîreşîrê şarûra, lîkelîqê bilbila, qipeqipê marînan û nêrkewa,

Te mala me şewitand bi qurçkirina çava, bi hilkişandina birûya; bi gotegotê nava mala bi kure pistêber dîwara, bi golinê bi derewa.

Yar, yar, yar, yarî ! Heger merûşê te konê bavê şewityê,

Tu were li min û li vî halê agirkî berde laşê min û vî qerpalî.

Te mala me şewitand bi ramîsanê yek carî, bi xewa serê sibê, bi bedlê danê êvarê.

Birîna Meyrema qîza Elo bê derman e, birîna m'arê qarî

Yar yar yar yarî...

Heger Meyremê te konê bavê şewityê, dilê mi rebenê, xwedê dilekî wa li dîn e, sê meh zivistana mê tê hec û gergîn e. Sê meh buhara me tê, bi gul û bi çîçek, û kulîlk û rihana bibîne.

Sê meh havîna me tê, bi tîn û bî ne. Sê meh paîza me tê, bi taw û tewaw û ne xweşî ne.

Meyrema qîza Elo, li ba dilê mi nola xam cuwaniyakê ji kihêlê Elo Sellûma ketiye sala sisiya, hatiye ber zîn e.

Ezê je dilê xwe ra lê kim zînekî zerî tûncîn e.

Bavêm paş kulavekî sorî hemayî, tûtikî rengîn e.

Bera pêdim cotek teyrê Hurî, ali-walî ser destî lawîn e, berdim berya Kerkûk û Hevlêrê paşa Heyder e.

Serî sar e, kokî zer e, sal midêrê xwedê sîka mêwê tim le ser e. Te mala mi şewitand, tu ji xortê gundê gergeryê ra bû derd û emelê te, mala mi şewitand mala gelek lawkê xelkê ber da bere...

—Yar yar... Heger Meyremê te konê bavê şewityê gundê Gergerê bişewite li genima.

Tu rabe, ra mebe bejna xwe a hêlkan me hejîne. xortan û nezana meke tima, 7 qeda li bedena mi keve, me xwe berda berya Helebê Humus û Hemayê Kûta û Reqayê.

Hêla dêrê hilkişyam, bajarê Nisêbînê hilkişyame, bajarê Bedlîsê û Mûşê,Madenê û Meletiyê Xarpûtê, gundê Gergerê cî û mekamê Meyrema qîza Elo serê rûbarê çema.

Minê kesek nedî, ser bejna te ra, çîçeka qîza gula bûka, bizmika xatûna çawîşa ber devê xanima.

— Yar... .. .. heger Meyremê te konê bavê şewityê, feratê bunyanê bişewite li serê kura, di ser bejna te ra mi xwe berda berya Hemayê Kûtayê û Reqayê û Dêrê û Nisêbînê.

Ketim aliyê Bedlîsê û Mûşê û Ma'denê û Meletyê û Xarpêtê.

Mi kesek ne dî,di ser te ra heger merûşê te konê bavê şewityê xelk û alem temam dibên Meyrema qîza Elo bi şêxmûsê, lawê gulê qail nabe.

Nizam çira, tu pîkê xwe î rastê bilinke, ezê herim di bin ra heçî eyba wir heye bira were du nabêna her du çavê mi ra.

— Yar ... ... ... Heger Meyremê te konê bavê şewityê.

Yar .. .. heger Merûşê şevekê ji êvara xwedê da ketime orteka te û dergûşê, yek hatiye serê min û Meyreme, qîza berya jêrîn e, wê illim ji mi ra ji karê û xezalê yekê li hev du vegerîne.

Sing û berê Meyrema Elo li ba dilê mi, mala belekiyak berfê ye, li Kaniya Sîma zozan, bîra pir belekê çiyayê jorîn e.

Heçiyê xort lê binêro ne xwe êşa xwe hilîne, û heçî bi xwe mereza dilê wan bihilîne

Yar.. .. .. Meyremê te konê bavê şewityê, vaya dile vaya dile.

Goşt û hem Bulxar e, nala gwîza Hindê bê kakil e.

Ji goşt û birincê pir çêtire.

Tu were, destê xwe di na bêna destê mi ke, emê hev du birevînin bavên bajarê Meletyê, paş Reşid paşa, kekê Zeynebê, kurê dewletê bizmika Hakima, çîçeka Osman Sur re.

Yar .. .. .. bira feratê paxelê nehata carê li cara, bira kefê û kincêlê xwe ne dasîqalê girê Belqîsê, qebşê bê xwedyê darê hina ra, xeberek ji mi ra hatî dibê Meyrema qîza Elo desta te a heft sala, biskê xwe jor da berdane. Ser qaşê guhara, li ser hinarê rûkê xwe badane, kirne qoçê karê xezala;

Te mala mi şewitand vê ra danî mala hevala.

Yar .. .. .. Heger te konê bavê şewityê şevanîvê şeva daîm ket me cemê.

Rojê tu car narim, je xiyal û ji xemê te, dê gawurê, bav ecemê.

Dev ji gevîtê ziman, ji qelemê tilî balmûmê;

Nik bi şimikê, bejinziravê, nav bi qezê, ser bi zêrê, enî bi deqê, cênîk bi ribê; bisk bi têlê, çeng bi çînê, xort xapînê, neynik gewrê, yarim bi nexşê...

Heft belayê, qapi emelê,çil sazê, saz derwînê.

Heger te konê bavê şewityê diranzêrê, bi dirhemê, te mala mi şewitand, mala gelek lawkê xelkê berdaye cemê.

Emê nazan û nazbalgiya ber palên xwe din, bira sura bakî xerbî li me rabe.

Temeriya min î reşî qurf-kirî biskê ta şê û zerî simêlê, minî sor sosinî bira her sê li hevdu rabu hurin, sing û berê Meyrema Elo li ba dilê mi nala belekyak berfê kaniya sîma zozan, bîra pir beleke, çiyayê Îsnawur e.

Her çî xort ji hêl û hewesa dilê mi ra bê mirin tê na buhurim.

Yar yar yar yarî.

Heger Meyremê feratê bunyanê kelê paxelê Hecî Kayîn Begê şewitî, tê û dilengire.

Sing û berê Meyrema qîza Elo, nala belekyak berfê bîra pir belek e.

Çiyayê çûçik û sitere, na welleh nala textê sultan Reşad, şert û qayişê 7 duwelê ecnebî li ser e.

Memikê Meyrema Elo nala heb ek gûşiyê tiryê qoce Swêreka şewitî ji tiryê paşa Heyder e.

# MIREKA CIHANE

(MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞITIYÊ

**Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî**



Keça General DE GOL Ji Bona Azahî û Serbestiya Welatê Xwe Dia Dike.



Eniya Talyanî: Ceng Di nav Kûçe û Kolanan De Dom Dike.



Reşik Direqisin, Kêfa Her Miletî Bi Awakî Din Tê.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

Sal 2 — Hejmar 33

Duşemb 3 Kanûna Paşîn 1944

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## CENG & SIYASET

## DEWRAN

EV PÊNC SAL IN

### Ev Pênc Sal in

Miletên Ewripayê ên ji qiwetketî, di bin pêncên dijmina de êdaniya hatina Sersalê dikin û pênc sal in ew li hêviya bilindbûna roja azabî û serbestiyê sekinîne. Belê rast e ko ev şer hêj ne qediya ye, lê delêletên hêja û mezin hene ko hêviya xelasiya vî şerî didin.

### Mr. Çorçil Bi xwe

Gava li Misrê di pêşiya leşkeran de peyiviye gote wan: hêvî mezin e ko di sala 1944 an de, eleman dê bêne şkênandin.

### Bûyerên Vê Salê

Ên hêja ev in:

1— Leşkerên Hevalbendan li her derê, hêj bêtir nîzingî sînorên Germanistanê hatine. Sala çûyî leşkerên elemana di Volgayê de bûn û perçeyine hêja yên erdê Qefqasê keti bû destê wan.

2—Ordiya Heşt xetên Romelê di Axelayê de şkênandi bûn, û hew.

3— Îro Ordiya Sor li hin deran 1.300 kilomêtiran pêş ve çûne û erdê xwe ji elemana paqij dikin.

4— Efrîqa bi timamî ketiye destê Hevalbendan, Behra Spî di pêşiya gemiyên Hevalbendan de dergehên xwe bi timamî vekiriye û Ordiyên 8 û 5 emîn ber bi Romayê ve dimeşin.

### Ref û Cengkeştiyên

Hevalbendan behrên dinyayê ji t'ada noqavên elemanî xelas kirine.

Ji aliyê din bombardimanên hewayî bihna elemana diçikînin; di nav 48 saetên vê hefteyê ên dawîn de 5.000 bombeavêj direjî axa Germanistanê kirine û bi hezaran û bi deh hezaran bombeyine şewat û teqandinê avêtine erd û hêjagehên Germanistanê. Frense Ordiyeke mezin, ji pênc sed hezar şerevaniyan bihevketî pêk aniye, û firqeyên frensiz di erdê Italyayê de, ber bi payetextê vê erdê ve dimeşin. Bê şik îsal karine girane hatine pêkanîn û ev hêviya serfiraziya sala ko bê dişidînin û qaim dikin.

### Radyoa Vişiyê bê ko Bixwaze

Bi tiştekî girane mukir hatiye. Mecaristan, Bilxaristan û Romanya bi tirs hisabê dawiya siyaseta xwe dikin.

Jê xuya dibe ko ji bona wan dewletan jî xelasiya elemana ji vî şerî ne maye; an ne tirs ne diket dilê wan û mîna berî bi tiştên ko kirine û dikin dilxweş dibûn û mîna berî nanê şivên dixwarin.

Ev her sê dewlet yeqîn dikin ko birînên elemana xedar in, her çend jî, ejdehar hêj ne miriye, di bêhêvîtiya xwe de direjî dora xwe dike û wilo dixuye ko xiraxira wî direj e, wê dom bike.

### Di Italyayê De

Erdekî asê, gelî û çiyayên kûr û bilind bi kêri wî tên.

Di eniya talyanî de, eleman şikeft û mexaran, xaniyên gund û bajaran, gir û kepezên deştan, pengav û robaran ji xwe re kirine penah û bi rik pê didin erdê, û dikin riya Romayê ji dest ber ne din. Roma ,payetextê Cihanê Katolikî ye Ketina wê destê Hevalbenda, azakirina wê bi mêrxasiya leşkerên Hevalbendan, ji bona elemana, di pêşiya çavê dinyayê de derbeke dijwar e. Ji ber vê yekê yekîneyên Hevalbenda, Ordiyên 8 û 5 û lekên şerevaniyên frensiz divê kevirek pey kevirekî, kozikek piştî kozikekê zeft bikin.

# VITEBSK-JITOMIR

Moskû — Pêşveçûna Ordiya Sor ber bi Jitomir û Vîtebskê ve bêetlahî dom dike.

Londre — Wezareta brîtanî a hewayî dide zanîn: şevêçûyî bombeavêjên brîtanî bi awakî dijwar Berlîn bombardiman kirine, Raporên pêşîn elam didin ko derb cihên xwe girtine û pê xesarine giran gihane hêjagehên payetextê elemanî.

Berlîn — Danezana elemanî elam dide ko Ordiya Sor xetên Vitebskê ên berevaniyê neqeb birine.

## ORDIYA SOR

Moskû — Ordiya Sor Korosten vegirtiye û pêşmêrên vê Ordiyê di pêşiya Jitomirê de ne.

Londre — Ji hêla jêrîn ve refên brîtanî hezar ton bombeyên şewat û teqandinê avêtine Berlînê, Pêtiyên şewatên çêbuyî ber bi ezmanan ve bilind dibûn û dû û dûmana şaristan winda dikirin, 17 bombeavêj venegeriyane warên xwe.

## ENIYA DIWEMIN

### Wexteki Gelek Nîzing de Cengine Mezin Destpê Bikin

Stokholm — Hawîrên eskerî ên selahiyetdar bawer dikin ko êrîşa hevalbendan a mezin li Ewrîpa Roavayî di nav çend mehên ko pêşiya me de ne, wê destpê bike.

Nû York — Bombeavêja emerîkanî a nû «F.G.» ya ko di Nû-Cerseyê de têtê ceribandin heye ko di saetê de 1.050 kilomêtiran bifire.

## Çarsed firqe esker divêtin

Londre — Ji bona parastina sînorên ko îro deste elemana de ne 400 firqe esker divêtin, destê elemana de 290 firqe hene.

Londre — 10 Downing Strît, Qesra Serekwezîrê Brîtanî dide zanîn:

1 — General Eyzenhawer bûye serdarê hemî qiwetên ko êrîşî Ewripayê bikin.

2 — General Aleksander serfermandarê Ordiyên eniya talyanî.

3 — General Montgomerî serqomandarê qiwetên brîtanî yên Behra Spî

4 — General Sir Meyîtland Wilson, serdarê leşkerên Hevalhendan yên eniya Behra Spî.

5 — General Spatz fermandarê refên bombeavêjan.

## Kardariya Mihaciran Dixebite

Qahire — Hikûmeta Misrê nûmînendeyên xwe dê bişîne civanê Kardariya Mihaciran; ev kardarî bi pirsên mihacirên ko hatine welatên rohelatên nîzink û navîn dê mijûl bibe.

Londre — Şevêçiyê refên brîtanî 1000 ton bombe avêtine hêjagehên Ludwigshafenê.

Londre — Têtê bawer kirin ko di vê nîzîkahiyê de serekwezîrê polonî wê here dîtina serekcimhûr Rûzwelt.

## SERBESTIYA MILETAN

Dilê me hemî Kurdan bi Hevalbendan ve girêdayî ye, ji ber ko leşkerên Hevalbendan ên egîd û mêrxas, ji bona azahî û serbestiya cihanê û parastina heyîna miletên Biçûk û Heqşkênandî şerê zalim û zorkeran dikin.

Londre — Dubî 1.300 balafirên emerîkanî, nêçirvan û bombeavêj tevde, di Pa-de-Kaleyê de li asêgehên elemana xistine û ji aliyê din li balapirgehên Morleksê.

### Lê Ev Hal Jî

Nikare zehf dom bike. Herwekî payedayînên dawîn xuya kirine ko — General Eyzenhawer bûye Serfermandarê Ordiyên Hevalbendan yên ko direjî Ewripayê bikin û General Montgomerî serdarê qiwetên eniya talyanî — dema êrîşên mezin hin. bi hin nîzingtir dibe. Refên Hevalbendan, çekê brîtanî û emerîkanî ê hewayî, ji aliyê xwe, per û baskên elemana dişkînin. Hefta borî refên brîtanî û emerîkanî bi êrîşên xwe ên xurt ji nu ve perîşanî û kambaxî xistine nav bajarên elemanî. Du hezar ton bombe hatine avêtin hêjagehên bajarê elemanî Frankfurt, û hezar ton yên Berlînê.

Hemî bi hev re refên brîtanî, bi serê xwe, du sed hezar ton bombe berdane febrîqe, destgeh, karxane, bajar û şaristanên Germanistanê.

## QEFLEWAPOREK

LONDRE— Qeflewaporeke mezin ya ko eskerên kenadî dianî Ingilistanê, bi selametî gihaye bendereke brîtanî.

WEZÎRÊ



Brîtanya Mezin ê der vekariyê M. Îdin

## LEYPZIG

LONDRE— Weneyên bajarê Leypzigê ê bombardiman kirî— refên brîtanî 1.500 ton bombe avêtine vî şaristanî— pêş çavan dikin ko nîveka bajêr bi timamî şewitiye û hilweşiyaye, û jê pê ve sê stasyon, du gazxanê, elektrîkxaneyek û qesra postê derbinê dijwar xwarine.

WEZÎRÊ



Emerîkayê ê dervekariyê M. Kordel Hal

STOKHOLM— Di Nevelê de şerine zexim çêdibin. Di nav 24 saetan de elemana 20 cara ber êrîş kirine, bê feyde, pêş ve çûna Ordiya Sor dom kiriye û ev Gorodok û avahîgehên din standine. Tang û peyadeyên rûsî pêş ve diçin,

# DEMA NIHA

## Gotara general De Gol

CEZAYIR— General De Gol bi hênceta cejna Îsa Pêxember di Radyoa Frensizî de, peyiviye û gotiye: di pêşiya stêra zeferê de, ya ko nihû dibiriqe divê em dil û gotina xwe bikin yek û bigihînin hev û du. Dijmin di pêşiya zora qiwetên azahî û serbestiyê de, xwe bişûnda dikişîne. Divê emê bînin bîra xwe welatiyên me yên ko di destê dijmina de jar û perîşan bûne; hatine mihacir kirin ezab û zilm û neheqî hêj para wan e. Îro halê welatê me çiqas jî giran, derdên me çiqas jî dijwar bin, bi eşq û hevîn divê emê hemî xortên hevalbenda bînin bîra xwe yên ko ji bona azahî û serbestiya cihanê şer dikin û ji dil qedrê wan bigirin. Divê emê ji hev û du hez bikin, divê emê arîkariya hev û du bikin, divê emê dil û gotina xwe bikin yek; xelasî û serbestiya Welêt bi wan tiştan çêdibe.

## ÇIQAS ESKER HEWCE NE

LONDRE— Nivîsevanê eskerî yê kovara ingilîzî «Brîtanova» çavê xwe li pirsa qiwetên eskerî digerîne û dinivîse: Eleman ji bona parastina hemî sînorên ko îro ew nobetdariya wan dikin, ji hêla jêrîn ve hewcedarî 400 firqe eskera ne. Berî şikestina Italyayê û xesarên havîna borî di qada rohelêt de, der destê elemana 405 firqe esker hebûn. Lê bi ketina Italyayê 105 firqeyên talyanî ji dest çûne. Romanya û Mecaristanê eskerên xwe ji eniya Sovyetî kişandine. Îro destê elemana de 290 firqe esker hene û elemana divêtin bi vê qiwetê —ne besî şerên sala 1944-an—singa xwe bidin êrîşên xurt yên Salanû.

Tête bawer kirin ko generalê elemanî Rundstedt gotiye: 190 firqe esker li rohelêt, 50 li roavayî, 25 li Italyayê, 20 li Balqana ne bes e, û rewişa Ordiyên elemanî têr tirs û taluke ye. Romel li ser vê pirsa giran raporek çêkiriye û qedimandiye şerdariya elemanî a mezin. Erkanherbiya elemanî a mezin civanek daniye û bi vê pirsê mijûl e pirsa ko helkirina wê ecêb dijwar e.

LONDRE— Çend bombeavêjên dijmina duhî piştî nîro dikirin direjî axa Ingilîstanê bikin, nêçîrvanên brîtanî û topên balafirşiken ew qewirandine.

LONDRE— Duhî refên brîtanî di bakurê Frensê de hêjagehên elemana dane ber derbên xwe. Nêçîrvanekî dijmin hatiye xistin erdê, mekîneyeke brîtanî venegeriyaye warê xwe.

LONDRE— Qerargeha Yugoslavî a mezin dide zanîn. Dijmina qiwetine mezin şiyandiye pêşiya nijdevanên me ên welatparêz. Tevdana qiwetên me di hêla peravên Dalmaçyayê de elemana gelek aciz dikin. Di Xirvatistanê de yekîneyên Tîto balafirgeha Velika standiye·

WEŞINGTON— Kolonel Noks, wezîrê emerîkanî ê behrî gotiye: di destê me de niho 42 gemiyên balafirhilgir hene, ango 6 caran ji 1941-î bêtir. Nêçîrvanên dinyayê ên xurtir ko ji febrîqeyên me derdikevin pişta stol û Ordiyên me xurt dikin. Îro stola emerîkanî de 4 hezar waporên nû biçek kirî hene.

## Arîkariya Sovyetistanê

WEŞINGTON— Emerîkayê çek û posatên jêrîn şiyandiye Sovyetistanê: 7.000 balafir, 3.500 tang, 130.000 mitralyoz, 450 000 otomatîk, 25.000 otomobîlên biçûk, 225.000 telefonên eskerî, milyonek û du sed hezar kîlomêtir têlên telefonê, milyonek ton pola, 350.000 ton ma'denên hêja, 400.000 ton derman û gewherên kimyewî, 600.000 ton derxistiyên gazê, 18.000 mekîneyên hesincawan. Bihaye wan tiştan sê milyar, 350 milyon û 443 hezar dolar in, ango sedî de 27 parên, çek û posat û hesincawan ko Emerîkayê daye hemî miletên Hevalbendan.

MELBURN— Piçtî şerekî no, leşkerên Hevalbendan Japon şkênandine û Pozê Glosesterê û balafirgeha di wê standine.

# DÛRIK

DÛRIKÊN LI BER TEMBÛRÊ

## KEÇIKA GUNDAN

Keçika gunda Sînemê
Sebt û lehd û çarşemê
Ez işev mêvanê te me
Sibe l'ser rêka xwe me
Keqera dilê min Sînemê,

Keç rîhana li aviya
Sînem rîhan li aviya
Te dî bu li ser xaniya
Mi dî bû li ser kaniya
Tena, tena dimeşiya.

Mi dest avêtî xebxebê
Bû xuşîna mobiya
Bi ser mi de ditewiya
Wek kevanê li bûçiya
Bû şingînê toq û beniya
Mi Devê xve xist gerdenê
Bi ser devê min de heliya.

Wek şekirê elbika
Mîna qeymaxê miya
Tim li serê biharê
Li ber beg û fendiya
Wek meknesa deştiya
Gulka kumê romiya.

## Serbestiya Behran

Di nav 48 saetan de, yekîneyên stola brîtanî di Bakurê Ewrîpayê de qriwazora elemanî a giran Şarnhorst û de rdelava Biskayayê 3 destriyorên elemanî bin av kirine.

Bêşik Şarnhorst û sê destriyor ji bona stola elemanî a biçûk xesareke zehf dijwar e.

Lê belê hêjabûna vê bûyerê ne bitenê ew xesarên giran in ko stola brîtanî gihandiye qiwetên elemanî ên behrî.

Bi vî ewayî du tişt qenc xuya bûne.

1— Herwekî zora noqavên elemanî çûye, eleman diviya bû yekîneyên xwe ên mezin, qriwazor û destriyorên xwe bişînin pêşiya qefleyên Hevalbendan.

2— Stola brîtanî pêş elemana kiriye ko girtin û berdan di behrên dinyayê de, di destê hevalbendan de ya, nijdevanî ji wextê xwe kctiye, û dawiya cengkeştiyên ko dikin direjî qeflewaporên bikin razaneke sar û kûr e.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞTIYÊ

Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî



GENERAL KASIMIERZ SOSNKOWSKI

Serfermandarê Leşkerên Polonî General Kasimierz Sosnkowskî Xortiya Xwe de Welatparêzekî Mezin û Fidakar Bû û Îro Qedera Ordiyên Polonyayê Destên Wî Ên Hêja De Ne.



Leşkerên Polonî Yên Ko Pêşiya Dijmina De Namûs Kirine Li Nîşeran Têre Serbilind Kirin.



Xortên Cihanê Di Riya Aza û Serbestkirina Welatê Xwe de Her Canfidakariyê Dikin.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MI CIRD'ORIENT

Sal 2 — Hejmar 35

Duşemb 17 Kanûna Paşîn 1944

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

ÇÎROK — ÇIRÇIROK

## DEWRAN

### Rovî û Gur

Rovîk hebû û gurek jî hebû, destbirayên hev û du bûn. Rovî rojek li çolê digeriya, rastî laşê kerekî mirî hat. Nerî ko xefik di neqebê de vedayî, ew jê tirsiya, nas kir; rabû çû çolê li destbrakê xwe ê gur geriya. Hev û du dîtin, go: Ya brayê min ê gur, vaye xwarineke pir zehif û xweş mi dîtiye. Gur pê re hat wê derê go:

Ya brayê min rovî, kerem ke bide pêşiya min,

Go: ji serê min zêde ye, ez bidim pêşiya te.

Gur pê re got: na be, divê tu bidî pêşiya min.

Rovî got: ya brayê min gur, ez bi rojî me, ez nikarim rojiya xwe xira bikim.

Gur da pêşiya wî û xefik got şing, kete lingê gur.

Gurî got: ax, Xwedê mala te xira bike rovî; heke ez ji vê xefikê filitîm, de ez mala te xira bikim. Rovî lê vegerand go: malxerab, ez karim te xelas bikim, lêbelê ez birçî bûm û mi xefik dîtî bû, ko ne bi vî hawayî ba, minê çawan têr bixwara, lêbelê sibe xwediyê xefkê wê bê ser xefka xwe û tu xwe di xefkê de bimirînî.

Êcarê xwediyê xefkê, wê bi lingê te bigirî û te bavêjî û tu ê birevî. Vêcarê wê xwediyê xefkê destê xwe li çoga xwe xînê, wê bibêje, ax ji destê min çû,

Rovî got: ma ne vêcarê dora min e, ezê têr bixwim. Gur got rovî; Hey malxerab, te go ez bi rojî me. Rovî lê vegerand go:

Min hisabê xwe dîtiye; îro zêde ye ji meha remezanê, heçî ko rojekê zêde bigir e, pir guneh e û rovî têr xwar û çû.

Piştî ko çû, gur xwe di xefkê de veziland û xwe mirand.

Sibehê xwediyê xefkê hat ser xefka xwe û kêfa wî pir hat, go:

Min nêçîra xwe girt. Piştî hat ser gur, nêrî ko miriye, lingê wî girt û ji xefkê avêt, gur bazda. Destê xwe li çoga xwe xist go: ax tu ji destê min filitî.

Gur li çolê digerî, golek avê nîzîkî gundekî heye, û rovî li wê derê razaye.

Gur pê re got: rovî rabe ser xwe, de ez te bixwim, ez zehf birçî bûme. Go: Ji ber çi tu min bixwî. Go ji ber fen û hîleyê te;

Ê go: malxirab ez pîr bûme, goştê min nayê xwarin, lê belê tiştekî din li cem min heye; Go: çiye?

— Go: ev gola ha tu dibînî,

— Go: belê ez dibînim.

— Go: kevirek di nava wê golê de heye, ez diçim ser wî kevirî, û ez dêla xwe bera nav avê didim; û sibehê ez dêla xwe dikişînim, zehf masî bi dêla min ve digirin, û goştê masiya xweş e; ez têr dixwim.

— Go: de were bi dû min.

Gur rabû ser xwe û da pey rovî, çû ser kevirê golê;

Rovî go: de vêcarê dêla xwe bera nav avê bide û sebir bike.

Piştî nîvê şevê bayê kur rabû û dinya zehf cemidî û wê golê qeşa girt. Ser û binê wê hemî bû qeşa, Gur dêla xwe hebekî kişand, nêrî ko giran e, nikar e. Go: rovî dêla min pir giran bû ye. Rovî go: ez li bextê te me, tu deyin ne ke. Go: çima, go ez jî birçî me, te jî birçî yî, bila zehf masî, bi dêla te ve bigirin, ko ez jî têr bibim û tu jî têr bibî,

Piştî ko bû sibe, rovî xwe winda kir; û bi nav gund de meşiya. Zarokên gund rovî dîtin, ji hev du re gotin: va ye roviyek; ê ko rahiştin daran û ê ko rahiştin keviran û dan pey rovî, rovî jî, ji ber wan reviya, hat ser golê, Zaro bi dû de ne; hatin sergolê; û carekê wiha nêrîn, ko va ye gurek di qeşê de asê maye; û reqandinê bi kevira û bi dara. Gur bê hal bû, heya ko ev qeşa, şikest û dêla wî jê filitî; û baz da.

Piçikên qeşê bi dêla wî va mane û şeqşeqa wan e; li kûne gur dikevin û gur dibêjî: ev malxerabê zaroka he bi dû min de ne û kevira li min dixînin, Piştî wê gur xwe xelas kir, çû navsera çiyakî.

Carekî wiha nerî ko rovî li ber tehtekê razaye û ban kiriyê go: rabe ser xwe, îro roja mêra ye, rovî rabû ser xwe û got; hişî ez li bextê te me. Gur pê re got: tu çima li bextê min î.

Go — ev te htaha î bilind tu dibînî, gur lê vegerand go: erê, ez dibînim, Rovî pê re got— ez destmalekê li ser çavê xwe dişidînîm û dibe qareqarê kewa, li biniya tehtê tije kew dibin, û ez xwe da vêjim ser wan, her carê deh, diwanzde kewa, ez ji xwe re digirim û bi goştê wan kêf dikim, hey Gurol diran biviro, hey bê aqilo, tu dibêjî; ezê te bixwim, ma çi goşt di mi heye.

Gur lê vegerand: ê go vê carê dora min e, destmalekê li ser çavê min bişidîne, ezê xwe bavêjim xwarê, ser kewa, belkî ez jî ji xwe re çend heba bigirim û ez têr bixwim, lêbelê te mala min xira kir û te ez ji birçîna kuştim; destmal li ser çavê wî şidand, û kewek ji zozanê vê alî kir qarqar û yekî din jî, ji aliyê di ve kir qarqar û rovî pê re got; Guro, biniya te tijî kew bûn e, de xwe bavêje ser wan, ko te çend hebê zêde girtin, yekî didiwa bide min jî. Gur lê vegerand go; erê, ez çavê te me, go: ezê bidim te û piştî vê gur xwe avêt xwar, perçe bû, hestiyên canê wî hemî şikestin, hûr bûn; u jî nû ve rovî dûket ser cendekê wî, li dora wî kir fişk, fişk. Gur pê re got: ro viyo. çi fişkefişka te ye, li dorâ min. Go—Guro, diran biviro, ser mezino, aqiltiro, go; ezê îcarê te bixwim, û Gur lê vegerand go: ev çi eceb e, ko rovî gura dixwe. Rovî lê vegerand go: tu kêmaqil î, roja ko mi tu xist xefikê, te xwe ji min nas ne kir, û piştî wê min tu xist gola qeşê, û car dî, te xwe ji min nas ne kir, û piştî wê, min tu di tehtê jî wer kir u ko tu sax bûna, te carek dî xwe ji min nas ne dikir, ê vê carê, heywanê mîna te bêaqil, heqê wan, çiye, ko rovî goştê wan bixwe. Gur lê vegerand û go: ez ketime haleke xerab, de kanî guhê xwe bîne ber devê min, ko de ez şîretekê ji bona Xwedê li te bikim û rovî lê vegerand got: Guro, ma ez mîna te bêaqil im, û tu mirî yî û ez bi saxî, xwe têxim devê miriya, go: ezê ji aliyê kûna te de, ezê te bixwim; û rovî bi goştê gur ket, hemû xwar, ma qehfeserê wî û rovî lingê xwe li qehfê serê gurî da û gindirand binê nevalê. Çîroka min ji we re xweş; ew gihan mirادê xwe û em dîn û îmanê xwe; û serê civata hazir sax.

MEHMÛDÊ OMERÎ

## Servaro ketiye Destê Hevalbendan

NAPOL — Servaro, asêgeha elemanî a dawîn, di pêşiya Kassînoyê de, hatiye vegirtin; her wekî Radyoa—Cezayirê elam daye. Servano du mîl bakur-roavayê San Vitoreyê û 6 mîl di rohelatê Kassînoyê de ye.

CEZAYIR— Eskerên elemanî yên ko berevaniya Kassînoyê dikirin, di pêşiya zora eskerên Hevalbendan de, xwe bi şûnda dikişînin.

LONDRE— D.N.B. dide zanîn ko Kont Çiyano, zavayê Musolînî û wezîrê talyanî ê dervekariyê î kevin, mareşal de Bono, Marînelî, Pareşî û Gotardî, yên ko hikmî kuştinê xwarî bûn hatine mirandin.

LONDRE— Refên emerîkanî ên mezin duhî bi ro dirêjî hêja gehên Germanistana navîn kirine.

### DANEZANA HEVALBENDAN

CEZAYIR— Qerargeha Hevalbendan a mezin li Efrîqa bakurî elam dide: Di eniya Ordiya pêncemîn de, leşkerên Hevalbendan êrîşên xwe ber ve ajotine û du mîlan pêş ve ketine; û du bilindahiyine nû standine. Di eniya Ordiya heştemîn de sezayî girtinê tu tiştî ne qewimiye. Bombeavêjên hevalbendan ên giran bendera Polayê bombardiman kirine, ji aliyê din bombeavêjên navbincî li Ankonê xistine; balafireke dijmin hatiye avêtin erdê û yeke hevalbend venegeriyaye warê xwe.

### Riya Romayê Her Kurtir Dibe

LONDRE— Eskerên Ordiya pêncemîn gihane pêşiya Kasinoyê.

LONDRE— Radyoa Berlînê elam dide ko yekîneyên Ordiya Sor gihane Sarniyê, ev bajar 35 mîl di roavayî sînorên Ûris û polonî de ye.

LONDRE— D. N. B. elam dide ko zavayê Musolînî Kont Çiyano, wezîrê talyanî ê dervekariyê î fesist hikmî kuştinê xwariye.

QAHIRE— Didin zanîn ko di erdê Italya vegirtî de Komîtêk a xelasiya welêt hatiye danîn.

### 142 Milyar Dolar Hatin

WEŞINGTON— Hatine hikûmeta Emerîkayê a 1943-yan 142 milyar dolar in, pêrar waridatê vê hikûmetê 115 milyar û 500 milyon — 115.500.000.000 — dolar bû.

QAHIRE— Kralê Yugoslavyayê ê xort Pier di dibistaneke brîtanî de — hînî balafirvaniyê bûye û guwahnameya xwe biriye. Mareşalê qiwetên brîtanî ê hewayî Sir Şolto Duglas bi destê xwe ev şehadetname da Kral Pier

LONDRE— General Vatutîn bi milyonek û 500 hezar şerevanî zor dide 900 hezar eskerên elemanî yê ko dikin xwe ji lepê Ordiya Sor xelas bikin.

## KARÊ WELATPERWERAN

QAHIRE— Welatperwerên Yewnanî di Balqana de zehf rêhesinên elemana xira û pirên hêja berhewa kirine

NÛ-DELHÎ – Refên emerîkanî yên qerargehên Çînî di Irawadiyê de waporeke dijmin 1.100 ton mezin bin av kiriye; û li hêjagehên dijmina xistiye. Balafirên emerîkanî bi selametî vegeriyane warên xwe.

QAHIRE Sir Bernar Paje yê ko bûye serfermandarê qiwetên Rohelatê Navîn hatiye Qahirê.

LONDRE— Radyoa Elemanî dide zanîn: di 24 saetên dawîn de şerê enişka Dnieprê a mezin hêj xurtir bûye. Leşkerên sovyetî ber bi bakurî ve êrîşî me dikin û qiwet û çek û posatine mezin têxin şerî.

### DI AXA POLONYAYÊ DE

MOSKÛ— Pêşmerên Ordiya Sor 60 kîlomêtir bi nav erdê Polonyayê ko destê elemanan de ye, meşiyane.

CEZAYIR— Qerargeha Hevalbenda a mezin li Efrîqa Bakurî bi danezaneke xas elam dide ko refên emerîkanî î mezin ji bombeavêjên Kelehên Firok bi hevketî bi ser axa Bilxaristanê de girtine u şaristanê Sofyayê bombardiman kirine.

### DI ERDÊ POLONYAYÊ DE

MOSKÛ— Ordiya Sor di axa Polonyayê de 65 kîlomêtir pêş ve çûye.

MOSKÛ— Di şerê Kirovogradê de 100.000 eskerên elemanî ji qiwet ketine.

CEZAYIR— Ordiyên 5 û 8 di eniya talyanî de ji nû ve pêş ve çûne.

CEZAYIR— Komîtê Frensiz a xelasiya welêt îro serê sibehê civanek danî.

QAHIRE— Mijûlahiya wezîrên Misr û Libnanê bi tifaka dewletên erebî di Qahirê de dom dike,.

# DEMA NIHA

NÛ-YORK — Îsal di Emerîkayê de Sê milyon û du sed hezar Zaro ji diya xwe bûne. Pêrar sê milyon û 40 hezar.

LONDRE— Duhî di ser axa Germanistanê û erdên vegirtî re, şerine hewayî gelekî xurt çêbûne. Ev cara pêşin e ko eleman hemî balafirên ko di destê wan de ne, şiyandine pêşiya refên Hevalbendan. Balafireke nêçîrvaniyê a nû Mûstagî 3, ya ko ji bona şerên hewayî, di bilindahiyên mezin de, hatine çêkirin, ji alî hevalbendan kelêhen Firok dihemaitdin; ji balafirên nêçîrê ên adetî pê ve.

Eleman qala vî şerî dikin û dibêjin ko heta niha şerekî hewayî hinde xurt çênebûye, Elemana bi isûline nû emel kirine ne balafirên wan bi têlan dû xwe ve bombe û gulleyine mezin dikişandin.

LONDRE— Danezaneke resmî elam dide: Ji 700-î bêtir bombeavêjên emerîkanî ji Kelehên Firok, Liberators bi hevketî di penaha nêçîrvanên Thanderbolts û Leyitnings de li karxaneyên balafiran xistine û xesarine giran gihandine wan hêjagehan; ne muze li destgehên Fokewulf 190, li Halberstadê û yên Yunkers 88 û 87 jî derbine zeh dijwar xwarine. Di Brunswikê de ji sê destgehên Messerşmîd 110 du heb bi timamî xira bûne û a sisemîn gelek êşiyaye. Şerine hewayî xurt çêbûne; ji 100 î bêtir nêçîrvanên elemanî hatine avêtin erdê, 59 bombeavêj û 5 nêçîrvan venegeriyane warên xwe.

## Eniya sovyetistanê

LONDRE— Nivîsevanê Brîtanoyayê ê eskerî qala şerên eniya Rohelêt dike û dinivîse: Wilo dixuye ko di serdestî û pêşveçûna Ordiya Sor de, parên du tiştan gelek mezin in.

1.— Lekên şerevaniyên rûsî ên pêsivik, yekîneyên ko xwe dilezlizînin, bê wext windakirinê didin pey qiwetên elemanî yên ji cihrakirî û riya pêşveçûna Ordiya Sor bi awakî brûskîn vedikin.

2.— Xurtiya agirên topên sovyetî, topên ko derên hewcedariyê de têne li hev civandin û agirê wan mîna bedenekê pêş û paşê dijmina digirin. her çend jî der gelek deran elemana bi çeper û şargehên pola emel kirine, penahên ko 20 û heta 30 hezar tonî giran in û tê ne gohaztin; mîna topan ji cihekî têne hilanîn cihekî din.

Agirê topçiyên rûsî nemaze di axa Jitomirê de xurtiya xwe pêş elemana kiriye, şargeh topçiyên dijmina yên ko deh kilomêtir durî xetan de bûn pelixandine û sedî de 60 hebên eskerên wan topan kuştine.

Li gora nûçeyên dawîn, eleman ji her derê esker tînin û têxin asêgehên sînorên Polonya û Romanyayê bi qesda sekinandina êrîşa Ordiya Sor, lê şik têde heye ko eleman bê ko di eniyên din de yekcar qels bikevin, wê bikarin eskerine teze têrî berevaniya sînorên Polonya û Romanyayê bînin û têxin pêşiya Ordiyên sovyetî.

ENQERE— Serfermandar Mareşal Fewzî Çeqmeq herwekî emrê wî gihaye sînorên pîriyê hatiye teqaid kirin.

Bi vê hêncetê Serekcimhûr Ismet Inonû bi nameya ko jê re şiyandiye qedrê xidmetên di wî girtine.

ENQERE— Wezareta tirkî a zanînê emir daye şagirtên tirk yên ko di Bêrlînê de dixwînin, herin Zurîx an Bernê û li wî bikevin dibistanan û xebata xwe pêş ve bajon. Di dibistanên elemanî ên mezin de 350 şagirtên tirk hene.

CEZAYIR— Eniya Ordiyan pêncan de pêşveçûna leşkerên Hevalbendan ber bi Kasînoyê ve dom dike. Yekîneyên general Klark, 2 kilomêtiran pêş ve çûne û gihane Servaroyê..

LONDRE— Di nav 24 saetên dawîn de Sofye du caran hatiye bombardiman kirin. Qiwetên Hevalbendan ên hewayî niho hemî qerargeh û hêjagehên elemana yên axa Balqana didin ber agirê xwe û wan xira dikin.

## PÊJINÊN DINYAYÊ

### CENG & BIHINGEH



Xwedî Tac û Text, Hikimranên erd û Kişweran Kral û Kralîça Ingilistanê

## XEBATA WELATPERWERAN

Iro çar sal in Frense, ev welatê xurt û mezin, di destê elemana de ye; û ev çar sal in, frensiz di welatê xwe de berberiya elemana dikin, her çend jî ev şer û berberî zehf zehmet e, û têr tirs û taluke ye, ji ber ko bêbext di Frensê de jî hene û wan xwe kirine xulamê elemana û arîkariya elemana, û bêbextî li welat û welatiyên xwe dikin.



Lê belê ji bona eşq û bawerî, xebat û mêrxasiyê her tişt hêsani ye, tu fida karî ne mezin e û ji xwe dor gul e, dor şîlan e.

Frensizên welatparêz bi şev û ro, ji bona derêxistina biyaniyên zalim û zorkeran ji axa Frensê a pak dixebitin.



Lêbelê ev xebat, ne xebateke eşkere ye, veşartîye, welatperwerên Frensiz dizîka dixebitin, pir û rêhesinên Frensê yên ko bikêrî elemana tên berhewa dikin frensizên bêbext yên ko xidmeta eleman û biyaniya dikin, dikujin; destê wan da bombe dikevin qişle û civangehên esker û zabitên elemanî, wan tevî xwe ber hewa dikin.

Ji bona vekirina çavê xelkê kovar û rojnameyan çap û belav dikin.

Îro di Frensê de 300 kovar û rojnameyên veşartî hene, ev 300 kovar û rojname bi dizî têne nivîsandin çap û belav kirin.

Ev her du wêneyên he xebata welatperwerên frensiz şanî me dide: ya pêşîn; rojnameyên ko bi dizîka têne belav kirin. Wêneya paşîn: welatperwerek têlên telegrafê dibire.

## Strana Kurdî

### Ha Wer Delal

Ha wer delal
Kela min bi kela,
Mi da bû germa havînê
Mi dî bu sê cotê xezala
Berê xwe da bûn çiyayê Şingalê
Û çongê xwe da bûn mexela.
Bavê min kal e û diya min pîr e.
Delalkê malê
Şekirê nava destmalê
Di ser vê qubalê
Mewicê Hebabê û bestîqê Çermikê
Hejîrê çiyayê Şingalê
Êmişê dora Heşmilê xopana Qibalê
Gewrê tirsim bimirim tu sebeb î
tirba min bikolê li hewşa
mala bavê te bî
Bigire destik avê li qebra mi xe
Bêje sed car rehmet li gora dê û
bavê te bî.
Destmal sor î, pêşmal şîn î
daw bi gul î.
Hey lê wayê!...
Ez bitenê îşev mêvanê te me,
Ez xilxala lingê te me
Û heyrana bejna te me
Mêrê te, çu bû eskeriyê
W'ez wekîlê mala te me.

### Xewna Min

Fetûma bandikirê digot Xemrayê
lê xwîşkê...
Şcvêçûyî mi xewnek dî ye
Serê sibehê ez rabûm, dilê min
Ji xewna min dixeliya
Mi dî du seriyê berana, di beroşa
mala bavê min û te de dikelya
Serê sibehê ez bi çola Hesarê
diketim
mi dî dengê çapliya, qeştînê
fedawiya
Kozik bi hev du ve qedimandine,
peyayê mala Qito çepildirêjî
mala Nêsir bi qebtê xencerê
soraniya...
Fetûma bankir Xemrayê
Xwîşkê, porkurê, tirsa mi ji wê
tirsê, ko ji mala bavê min û te
Bikujin beranê pezkoviya...
Ezê rabim, berê xwe bidim bajarê
Paxir Ma'denê, ji mirîdê şêxê
Zîla re bazar bikim sifr û sêniya
Ez ê herim bajarê Diyarbekrê,
Ji peyayên mala Qito re bikirim
şal û şapika, bavêm
ser tersçiya...
Ezê herim bajarê Mûşê, ji
çepildirêjî mala Nêsir re, ezê
bikirim fîşekê çapliya...

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

2ème ANNÉE — LUNDI 17 JANVIER 1944 — NUMERO 35

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

# VERS LA VICTOIRE

## CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

L'offensive soviétique d'Hiver gagne toujours en ampleur. Les observateurs militaires et politiques rapportent qu'on est encore au début du vrai Hiver de l'U.R.S.S. et que la victorieuse Armée Rouge nous réserve de grands évènement sensationnels prochains. La preuve en est donnée chaque semaine, par les exploits glorieux des troupes soviétiques dans les divers secteurs du vaste Front Oriental.

Le début de l'offensive d'Hiver fut marqué par la poussée du Général Bagramian qui a porté l'Armée Rouge aux portes de la base de Vitebsk, dans les défenses extérieures de la ville. Elle fut suivie par la formidable offensive du Général Vatoutine, qui continue à saigner à blanc les forces durement malmenées depuis un an du général allemand Von Mannstein. Quelques semaines plus tard, les troupes du second front ukrainien, commandées par le Général Koniev, sont passées à l'offensive à l'intérieur de la boucle du Dniepr et depuis le 5 Janvier dernier, elles anéantissent les effectifs et détruisent le matériel d'une grande armée allemande, déjà en difficulté, à cause de la gigantesque entreprise combinée des généraux Vatoutine et Koniev, qui tentent de prendre à revers les armées allemandes de tout le front méridional de la Russie.

Cinq jours à peine se sont écoulés, qu'une autre offensive est déclenchée. Cette fois, c'est le général légendaire russe Rokossovsky, défenseur de Stalingrad, qui, étant passé à l'offensive en Russie Blanche le 10 Janvier, a percé les lignes ennemies au Nord du Pripet, en direction de Mosyr, situé au coeur même des marais.

Et maintenant, c'est le tour des troupes du 3ème et 4ème fronts ukrainiens, ainsi que celles du front du nord, de passer à l'offensive et de pulvériser toute la ligne du front allemand, de Léningrad jusqu'à la mer Noire. Le jour est proche, où on entendra de nouveau parler des exploits des célèbres skieurs rouges spécialement entraînés en Sibérie, qui forment actuellement, dit-on, une armée formidable de deux millions d'hommes.

Les troupes du Général Vatoutine poursuivent sans cesse leur poussée en direction de la Pologne, de la Roumanie et de la Mer Noire, en vue d'encercler les forces de Von Mannstein et leur infliger un désastre semblable à celui de Stalingrad.

Au cours de son avance en direction de la Pologne, l'aile nord des troupes de Vatoutine a largement dépassé les frontières polonaises d'avant 1939, a parcouru une distance de plus de 95 kms et a pris sur son chemin le centre ferroviaire de Sarny. De la sorte, l'Armée Rouge a coupé les chemins de fer Vilno-Rowno et Varsovie-Kiev, désorganisant les communications entre les forces de Von Mannstein et celles de Von Kluge, qui combattent sur le front central. Désormains, les communications, entre ces deux armées allemandes doivent se faire par des voies secondaires, situées à 130 kms à l'ouest de Sarny.

Mais le général Vatoutine menace également les derniers moyens de communications de Von Mannstein. Au cours de son avance en direction de la Roumanie, Les troupes ont déjà atteint les rives septentrionales du fleuve Boug et ne sont plus qu'à 25 kms de la voie ferrée Varsovie—Odessa et à queques 70 kms de la frontière de la Bessarabie. Réalisant les dangers qui les menacent, les forces de Von Mannstein tentent maintenant désespérement de garder Vinitza et d'enrayer l'offensive soviétique sur la ligne de Boug, dont la perte équivaudrait à l'anéantissement presque total des plusieurs divisions allemandes restées dans la boucle du Dniepr, ou le Général Koniev a déjà commencé la besogne. Au cours des combats qui ont duré du 5 au 10 Janvier, les troupes du Général Koniev ont tué en effet plus de 15.000 nazis et ont détruit ou capturé 400 chars, 520 canons et 3000 camions allemands.

o—o—o

L'avance de l'armée rouge, en direction des Balkans et son approche aux frontières roumaines a créé une vive émotion dans les pays satellites de l'Allemagne. C'est ainsi que la Hongrie et la Roumanie, en désaccord restent sur le qui—vive en face du danger rouge et s'efforcent de régler le différent que les sépare. L'enjeu de ce différent est la possession de Transylvanie. Avant la guerre, cette région appartenait à la Roumanie. A l'apogée de sa puissance, Hitler l'a arrachée et offerte à la Hongrie, pour obtenir l'aide de l'armée hongroise.

Plus tard, promettant le retour de la Transylvanie aux roumains, Hitler a obtenu d'Antonescu l'armée roumaine. De la sorte, ces deux armées balkaniques ont fourni à Hitler de la chair à canon à Voroneje, à Rostov, en Crimée, au Caucase et à Stalingrad. Au cours des deux premières années de guerre sur le front oriental. les unités hongroises furent presqu'entièrement anéanties. L'armée roumaine fut si durement malmenée, qn'Antonescu a du la reconstituer,

Aujourd'hui, devant la gravité du danger, la Hongrie s'efforce d'abandonner l'Allemagne. Les dirigeants de Budapest font remarquer que les quelques unités hongroises qui restent encore à l'Est, y étaient envoyées depuis longtemps et que leur rappel s'avére pour le moment impossible.

La confusion et l'anxiété règnent en Roumanie. Les villes et les villages de la Bessarabie sont déjà vidés. Les fonctionnaires d'état fuient, en toute hate, vers l'intérienr du pays. D'autre part, le gouvernement s'apprête à quitter Bucarest pour une destination inconnue.

Il réalise que les Soviets ne lui pardonneront pas les crimes que ses troupes ont commis contre les citoyens innocents soviétiques. Les Soviets n'oublieront pas la présence des Roumains à Odessa, au Caucase, en Crimée, ou à Stalingrad. L'heure de la vengance, de la justice est proche.

Une crise latente dévore la Bulgarie depuis la conférene de Téhéran. Les dirigeants de Sofia ont perdu tout espoir de sauver leur pays, grace à une prétendue intervention soviétique, espoir qui reposait sur le caractère slave de la Bulgarie. Dimitrov, le célèbre chef communiste bulgare, vient d'avertir les dirigeants pro—nazis de Sofia. M. Hull a récemment déclaré que les satellites ne pourront pas échapper au chatiment.

La crise bulgare est dûe à une double menace. L'armée Rouge menace la Bulgarie du coté de la Mer Noire.

La radio libre clandestine bulgare rapportait, il y a quelques jours, que les Allemands massent des troupes tout le long des côtes bulgares pour parer à une invasion éventuelle soviétique. De l'autre coté, l'aviation alliée pilonne les objectifs de Sofia, toute la population entière, vient de prendre le chemin d'exode.

En attendant, l'heure de l'invasion de l'Europe par l'Ouest approche. Les chefs militaires alliées activent leurs préparatifs. Les aviations anglaises et américaines pillonnent sans arrêt les côtes occidentales et toutes les villes allemandes; elles sont décidées à pulvèriser «la forteresse Europe» et l'«Atlantik Wall» d'Hitler.

K. B.

## UN GRAND BIENFAITEUR DE L'HUMANITÉ

# PASTEUR

*Louis Pasteur est né à Dôle, en Franche-Comté, le 27 Décembre 1822. Son père était un homme du peuple et exerçait la profession de tanneur. L'enfance de Pasteur s'écoula dans le Jura, à Arbois où ses parents s'étaient établis. Le cadre était ravissant : la rivière coulait rapide auprès de la maison et formait une petite cascade; la tour carrée de l'église, les prés et les vergers, les collines plantées de vignes. Le jeune Louis commença son instruction à l'école primaire d'Arbois puis au collège d'Arbois, où il fut un élève ordinaire ne montrant jusqu'à l'âge de 16 ans que des dispositions pour le dessin.*

*En Octobre 1838, Pasteur est amené par son père à Paris où il suit les cours au Lycée St. Louis. Mais, il a la nostalgie du pays et bientôt il retourne au collège d'Arbois. C'est à ce moment que se manifeste sa passion pour les sciences. Il achève ses études au Lycée de Besançon.*

*C'est de Besançon qu'il écrit à ses sœurs ; «Mes chères sœurs, je vous le recommande encore : travaillez, aimez-vous; avec la science on s'élève au-dessus de tous les autres». Son rêve est d'entrer à l'Ecole Normale. En 1841, il est maître d'études au Lycée de Besançon tout en suivant la classe de Mathématiques Spéciales.*

*1843, Pasteur entre à l'Ecole Normale de la Rue Saint Jacques d'où il sortira agrégé de sciences physiques ; puis en 1848 il passe son doctorat ès-sciences avec une thèse de physique. Sa vocation de chimiste s'est déclarée ; il est en relation avec les savants de l'époque: Dumas, Balard Baruel, Delafosse, Auguste Laurent.*

*Dans les rues de Paris, Pasteur est un spectateur enthousiaste de la révolution de Février 48; il est garde national. Il écrit à ses parents : «Ce sont de beaux et sublimes enseignements que ceux qui se déroulent ici sous mes yeux : s'il le fallait, je me battrais avec courage pour la sainte cause de la République». Et il porte comme offrande sur l'autel de la Patrie tout l'argent qu'il possède à ce moment : 150 francs. Son travail sur la dyssymétrie molléculaire le classe d'emblée parmi les premiers savants de l'époque, et il n'a que 26 ans. Il est déjà célèbre.*

*Nommé professeur de Physique au Lycée de Dijon, il interrompt ses travaux; «Je ne puis malheureusement rien faire ici», dit-il. Heureusement, il est nommé professeur suppléant à la Faculté de Sciences de Strasbourg. Il peut alors continuer de 1849 à 1854, ses travaux sur la Cristallographie et sur la Dyssymetrie Moléculaire Il écrit à un ami d'enfance le philosphe Chappuis : Que n'est-tu professeur de physique ou de chimie ! nous travaillerions ensemble et dans dix ans nous aurions bouleversé la chimie! Il y a des merveilles sous la cristallisation, et par elle, la constitution intime des corps sera un jour dévoilée». Il est nommé membre correspondant de l'Institut.*

*Entre temps, il se marie avec la fille du recteur de l'Académie de Strasbourg, Mlle. Marie Laurent qui comprendra admirablement son rôle de femme de savant et qui sera pour Pasteur à la fois une amie, une confidente, une collaboratrice et une secrétaire.*

*En 1854, Pasteur est nommé professeur à la Faculte de Sciences de Lille. C'est là une date importante: Pasteur commence son etude sur les fermentations et en Août 1857, il présente à la Société des Sciences de Lille son fameux memoire sur la fermentation lactique. La science pastorienne commence à être la science qui bouleverse la vie humaine pour la perfectionner.*

*En 1857, Pasteur est nommé administrateur et sous-directeur pour les etudes scientifiques à l'école Normale Supérieure. Il veut alors aborder cette grande question des générations spontanees. Pour cela, il décide de renoncer à l'enseignement et de se vouer tout entier à la recherche. Dans 2 pièces minuscules, il installe un laboratoire. Plus tard, il obtiendra une toute petite construction, rue d'Ulm. C'est de ce petit laboratoire qu'est parti le mouvement qui a révolutionné sous tous ses aspects la science de l'homme physique. Plus tard encore, le petit pavillon est agrandi et prolongé par une nouvelle construction.*

à suivre

LEO LEROY

# DU NÊÇIRVAN

Rojeke du mirovê nêçîrvan di gundekî de hebûn; û her du jî neyarê hev bûn. Piştî çend rojekî li hev du hatin; û bêriya hev du zehf kiri bûn. Bi hev du re gotin: emê îro herin nêçîrê. Rahiştin kewê xwe û bi hev re çûn çolê.

Li wan bû şev û berf û baran, û rê li ber wan winda bû, ne ma zanî bi kû ve herin. Rastî şkeftekê hatin; gotin bi xwedê emê îşev di vê şkeftê de, ji xwe re razên; û derbasî hindurê wê bûn û ji xwe re agirek kirin û goştê kewa ji xwa re biraştin.

Piştî ko goştê xwe xwarin, carekê nerîn ko hirçek ket devê derî. Her du zilam li hirçê dinerin. ko cavê wê xirab e.

Hirçê xwe li ber êgir hejand, gindorên berfê ji nav pirça wê de ketin erdê, kêleka xwe da ber êgir û zivirî, kêleka dî jî da ber êgir qenc xwe germ kir; û bi der ket.

Her du nêçîrvana bi hev du re gotin: Ev hirça ha birçî bûye, ewê neha vegere û wê hina ji me bixwe. Emê rabin nobeta xwe bi kin. Hevalê wî lê vegerand go: Malxerab. heywanek bû û bi çolê ve çû, kengê vedigere.

Hevalê wî ê din pê re got: Ya bira, keyfa te ye, hekî tiştek hat serê me, ji destê te yî; û serê xwe danîn û razan.

Piştî du saetan yek ji wan rabû ser xwe, li dora xwe nerî, ko hevalê wî tune. Carekî nerî, ko şopa cenazê wî, hirçê bi dû xwe de kişandiyê û ji şkeftê bi derxistiyê, û şopa cenazê wî berf qelaş tiyê.

Hevalê wî hat li ber êgir rûnişt û di aqilê xwe fikirî: „go ya Xwedê, ez çawan bikim, ez ditirsim, ko ez herim mal, merovê vî zilamî, bi mi re bibêjin, «kanî filan kes» ez bibêjim, hirça xwar, ji min behwer na kin, wê min di bedêla zelamê xwe de bikujin. A qenc ev e, ko ez rabim, vê nîvê şevê bi dû şopa wî dim, û ez herim ser devê kula hirçê; ya wê min jî bi xwe, ya ezê heyfa hevalê xwe, bi destê xwe hilinim. Camêriya mezin ev e; û him mêrxasî ye, û him qencî ye.

Ew zelam rabû, wê nîvê şevê, da dû şopa hevalê xwe û hirçê; û ji vî çiyayî derbasî çiyayê wî alî bû, û rastî kula hirçê hat. Go: Ya Xwedê! û derbasî hindurê kula hirçê bû; û kula hirçê zehf dirêj e, li cîna teng e, û li cîna fireh e.

Li cihê fireh xweş dimeşe, û li cihê teng, goştê laşê wî bi tehta ve diçe, kirtikirta hirçê seh dikê, ko hevalê wî dixwe. Vê carê kul reş e, û hayê hirçê jê tuneye, bi hevalê wî lebikiye.

Ev zilamê mêrxas, ji hirçê ve qedimî, û destê xwe hêdî, hêdî avêt ser pişta wê, û bi ser pişta wê ve destê xwe anî, heya ser û guhê wî zeft kir.

Di fikra hirçê de ko ev zelamê ko kuştiyê, li ber halê xwe dide, hirç nizane ko hevalê wî hatiye û guhê wê zeft kiriye; û ev zelamê mêrxas xencera xwe kişand û yek li ser yekê li kêleka hirçê da, heya ko pêncî xencer bi hejmar lê da. Wê gavê hirç di nav destê wî dç ket û rabû gazî hevalê xwe kir, go: bira rabe, ez çavê serê te me, mi heyfa te bi destê xwe hilanî.

Carekê nêrî ko irîn ji hevalê wî hat û bêxêr bûye. Ew di kulê de hiştin û hat şkefta xwe; û ma heya ko lê bû sibe. Rahişt kewê xwe û ê hevalê xwe; çû mal. Gundiyên wî, merivên heyalê di wî gotine; kanî hevalê te, te kewê wî anîn û te ew li çolê kuşt.

Sûnd xwarin, ewan mirovên hevalê wî, jê behwer ne kirin. Wî mêrê mêrxas got merivên hevalê xwe, go rabin ser xwe û du werîsa bînin û bidin pey min. Rabûn ser xwe û dan pey.

Çûn çolê ser wê şkeftê û daketin hindurê wê, go: hon vê şkeftê dibînin, ez û hevalê xwe, em têde bûn, piştî nîvê şevê, ew mîratê hirçê hat hindurê şkeftê, kêlekên xwe germ kirin û bi der ket û mi bi hevalê xwe re got: emê nobeta xwe bikin, û wî bi a min ne kir.

Piştî saetekê ew hirç hat û hevalê min bir, ez di aqilê xwe fikirîm û ji tirsa we, mi da dû şopa wê hirçê, ez çûm ser devê kula wê û ez pêde meşiyam, heya ko ez giham rastî hirçê, mi destê xwe avêt ser pişta wê û hêdî, hêdî mi anî ser guhê wê, û mi guhê wê zeft kir û ez belişîm kêlekên wê bi xencer, pencî xencer bi hejmar, min kêlekên wê da, heya ko di nav destê mi de ket, û hekî hon ji min behwer na kin, rabin ser xwe, em herin laşê wan bi der xînin; û dan pey wî çûn ser kula hirçê û mêrê mêrxas bi kulê ve meşiya, serê werîs bi lingê hirçê ve girêda u gazî zelamê ber devê kulê kir û go: bikşînin.

Gava ko kişandin, çavê wan li laşê hirçê ket, ji hirçê tirsiya. gelekî, mêrê mêrxas li wan vegerand, go: Hey malxerabîno, çawa şev nîvê şevê, ez ketim ser vê hirçê û hirç sax bû, û devbixwîn bû û ez jê ne tirsiyam û îro niha dinya ro ye, û mi ev hirç bi destê xwe kuştiye, kesek ji heywanê mirî ditirse, ko hon jê ditirsin; û mêre mêrxas werîsê xwe car din, bi lingê hevalê xwe ê ko hirçê ew xwarî bû girêda, go: de bi kişînin.

Gava ko kişandin û li zelamê xwe nêrîn, ko hirçê nav û dilê wî hemî xwariyê; û gotin: sed aferim ji te re ya mêrê mêrxas, ko te heyfa mêrê me bi destê xwe hilaniye; û her du destê wî maç kirin û bexşîşa wî danê. Serê civata hazir ji min re sax.

## 2.250.000 TON

LONDRE— Di nav du salên şerî de 2.250.000 ton mezin gemiyên japonan hatine bin av kirin.

Di destpêka şerî de waporên japona hemî bi hev re heft milyon ton mezin bûn; heye ko di vê navê de 500.000 ton gemiyên din jî ketine destê japona.

Destgehên japonî her sal 750 hezar ton mezin gemî dikarin çêkin.

LONDRE— General Sir Henrî Meytîland Wilson gava di Londrê de bû, di Seraya Bukinghamê de ketiye hafa Kral Corc VI.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî



Bombeyeke Mezin Teqiyaye u Pê Du û Dûman û Qev Oiyamet Rabûye.



Bajarekî Mezin Tête Bombardiman Kirin. Refên Hevalbendan Bi Carekî Hezar Ton Bombe Davêjin Hêjagehên Neyarên Xwe.



Welatparêz Bi Her Texlît Silehên ko Dikevin Dest Cengê Neyarên Welatê Xwe Dikin.

## 65 HEZAR WAPOR

WEŞINGTON— Ji bona derêxistina eskeran erdê Ewripa û erdên ko destê Japona de ne destgehên emerîkanî 65 hezar wapora çêdikin; 20 hezarên wan ketine behrê û dest bikarê xwe kirin.

## ESKERÊN JAPONA

NÛ-YORK— Di nav du salên şerê Japon û emerîkanî de bi têne 400 eskerên japonî ketine destê qiwetên emerîkanî û bûne hêsîr. Leşkerên emerîkanî heta niha 120.000 eskerên elemanî û 170.000 eskerên talyanî hêsîr girtine. Li ba eskerên japonî hêsîr bûn li Miqado —Kralê Japona—bêbextî kirine, ji ber vê yekê eskerên japona gava dikevin begaviyê xwe navêjin bextê dijminan, lêbelê bi bombeyên xwe, xwe dikujin; zabitên Hevalbendan ev tişt bi çavê xwe dîtine.

QAHIRE— Refên Hevalbendan ji nû ve Sofye bombardiman kirine, xesar dijwar in.

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Diwan û gerînendekariya: Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Diwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BE DIR-XAN

## ÇENG & SIYASET

# DEWRAN

### DI PEŞIYA CIHANÊ DE

### SIYASETA EMERÎKANÎ A DERVEKARIYÊ

### Ez Dibêjim Ko

Emerîkayê divêtin xwediya siyaseteke dervekariyê bibe ya ko li ser sê bingehan dê bête danîn

Bê şik êv her sê bingeh, bi derbekê li hev siwar na bin û di heqê wan de gelek tişt dikarin bêne gotin.

Ez, ev her sê bingehên he pêş we dikim, bi dilekî pak û bi hawerî û bi şerta edilandina wan.

### Bingeha Yekemîn:

Emerîkayê di civanê silh û aştiya ko bê, divê xwe ji tifaqan bi hin dewletan, bi xurtî bide paş û divê ji bona yekîtiyekê bixebite, ya ko bi destê hemî dewletên dinyayê dê pêk bê.

Yekîtiya ko ne mîna civatê Miletan yê Jenevê, lê yekîtiya ko mîna dewletên Emerîkayê ye, ko em ev pêncî sal in lebatek ji ya wê ne.

Tifaqine amdagirtî, bi hina, di demên silh û aştiyê de jehrek e.

Di wan tifaqan de, du tiştên giran hene. 1.— Dewleta ko dibe hevalbenda dewletake din, dibe şirîkê qencî û neqenciyên ko bi dîrok û rewişa wê dewletê girêdayî ne. 2.— Ji tifaqine wilo bi vê neve, tifaqine zidên wê dizên.

Tifaqine wilo mîna pirs in ko cihaba wan heye.

Tifaqa ko yên din ji Ortê radike û deriyê dubendiyê digire ev tifaqek e ko hemî dewletên dinyayê têde ne.

Divê civatê cihanê de mezelek hebe û têde ji bona her dewletekê kursiyek, çi biçûk, çi mezin; çi qenc çi xerab.

### Bingeha Diwemîn:

Heke miletên dinyayê divê pev re bijîn û dirêjî hev û du ne kin, divê ew bielimin pev re bixebitin. Piştî şerê mezin i kevin hemî miletên dinyayê di warê ticaret û paşrojmendiyê de, şerê hev û du kirine; an şerê hemî nijadên cihanê.

Divê êdî bête seh kirin ko heke daxwaz ev e ko eskerên biyanî ne kevin erdê miletekî, divê bi xweşî û dostanî malên ticaretê di erd û sînorên welatan re derbas bibin, û em pê qîma xwe bînin.

Di selametiya cihanê de û der parastina aştiyê, kar û pirsên bingehîn, kar û pirsên ticaret û paşrojmendiyê ne.

### Bingeha Sewemîn:

Bi qiweteke navnijadîn, ango bi Ordiya ko eskerên hemî dewletên dinyayê têde ne, qesda parastin û berevaniya silh û aştiya cihanê, her wekî civata Miletan a Jenevê pêş me kiriye xewn û xiyaleke.

Tiştê ko dikare bête çêkirin ev e: di pêşiya pirsên giran û dijwar de, hemî dewletên dinyayê divêtin bi şerta danîna şêwir û mişawira bêne girêdan; û li gora pirsa ko divê bête safî kirin dewlet qerara xwe bidin.

Ji aliyê din divê neyê ji bîr kirin ko heke miletên mezin bi tenê hisabê heyîna xwe dikin, ji vî tiştî, tim û daim xirabî derdikeve, ev ji şerine mezinin.

Yeketiya miletên dinyayê; dermanê şer û pêşveçûna miletan ev e, û ev e ko me bigehîne aştî, rehetî û dewlemendiyê.

W. H.

# KOMEK JI XORTÊN KURDAN



XORTÊN ME ÊN TAXA KURDAN LI ŞAMÊ BI ZANÎN, XEYRET Û PÊŞVEÇÛNA XWE HEJA NE.

# BOMBARDIMANÊN DIJWAR

### DI NAV 48 SAETÊN DAWIN DE

LONDRE— Di nav 48 saetên dawîn de refên brîtanî û emerîkanî 5 caran li Berlîn, Frenkfurt û Brunsvîkê xistine û 5.000 ton bombeyên şewat û teqandinê avêtine hêjagehên wan bajaran. Di êrîşa Frenkfurtê de 800 bombeavêj û 700 nêçîrvanan bi ser hêjagehan de girtine. Xesarên çêbuyî ecêb giran in.

# ENIYA SOVYETISTANÊ

MOSKÛ— Leşkerên rûsî yên ko Krasno — Selo standine— 3 kîlomêtir nîro-roavayî Stalîngradê— pêşveçûne û berê xwe dane erdên roavayî. Di Krasnoî — Seloyê de Ordiya sor rastî însana ne hatiye.

CEZAYIR— Li gora qanûnekê ko nû hatiye çêkirin jinên frensiz hêj bêtir bikevin xidmeta Ordiya Frensizî û arîkariya eskeran bikin.

LONDRE— Topên, qeraxên behrê yên ingilîz û elemanî sê saet û nîv li hev û du xistine.

STOKHOLM— Eskerên emerîkanî bi piranî derketine peravên delava Gaetayê.

MOSKÛ— Danezana Sovyetî elam dide ko yekîneyên rûsî gihane taxeyên Kingî-sepeyê û der zehî deran li ava Lugayê derbaz bûne.

## Eniya Talyanî

LONDRE— Bi hezaran eskerên brîtanî û emerîkanî ber bi hindurê erdê Italyayê ve dimeşin bi qesda girtina riya sedhezar eskerên elemanî yên ko di eniya çemên Rapido û Garigliano yê de şerê Hevalbendan dikin.

NU-DELHÎ— Di eniya Arakanê de eskerên Hevalbendan dest bi êrîşî qiwetên japonî kirine.

MOSKÛ— Bi awakî resmî didin zanîn ko Ordiya Sor Gaçîna Narva standiye.

QAHIRE— Eskerên Hevalbendan yên ko pê li erdê Netuncyê kirine 6 kîlomêtir pêş ve çûne û rê û dora serpira danî firehtir kirine, ev qiwetên he ber bi rêhesina ko diçe Romayê, pêş ve dikevin.

## LI LENINGRADÊ

MOSKÛ— Leşkerên eniya Leningradê êrîşên xwe pêş ve ajotine û bajarên Puşkîn (Çarskoye Selo) û Pavlovsk—Sletsk vegirtine, ev her dû bajar ji Leningradê 17 û heta 4 kîlomêtir dûr in.

CEZAYIR— Radyoa Miletên Hevalbendan elam dide ko Rome êdî di bin hikmê topên Ordiya Hevalbenda de ye.

## HEZAR BOMBEAVÊJ

STOKHOLM— 1.000 bombeavêjên Hevalbendan têkilî êrîşa Berlînê bûne. 6.000 peya hatine kuştin an brîndar kirin.

PARÎS — Duhî di Balê de, erdê Svîçreyê, işareta talukê hatiye dayîn.

JENEV— Bajarê Sofyayê bi timamî hatiye vala kirin. Xaniyên payetextê Bilxaristanê sedı de 85 hilweşiyane û xesar gihane sedî de 65 hebên din.

LONDRE— Bi awakî resmî didin zanîn ko şevêdî bombeavêjên brîtanî, Muskîtosan derê i hêjagehên Germanistana roavayî kirine. Duhî serê sibehê refên emerîkanî û brîtanî bi ser axa Frense bakurî de girtine û li hêjagehên eskerî xistine.

## DANEZANA...

CEZAYIR— Qerargeha Hevalbendan a mezin li Efrîqa ... dide zanîn: Leşkerên emerîkanî û brîtanî û zehî çek ... posetên şerî ... cebilxaneya bi lez digehînin serpira ko di nîreyê Romayê de hatiye danîn.

PARÎS— Duhî henî waliyên Bilxaristanî di Sofyayê de civanek danîne.

# DEMA NIHA

## ENIYA BEHRA SPÎ

CEZAYIR – Di peravên Edriyatîkê de yekîneyên kenadî pêş ve ketine, her çend jî berberiya elemana xurt bû. Di erdê Anzioyê de leşkerên brîtanî û emerîkanî zora dijmina birine û gihane taxeyên Kampo Leone û Çisternoyê.

## Seyda Mîrza Ebdilhadî

Seydayê me ê delal Mîrza Ebdilhadî Mihemed, ji kerema Xwedê, piştî edakirina ferza Hecê, bi selametî ji Hicazê vegeriyaye û hatiye Bêrûte. Duhî gerînendakariya Roja Nû bi ziyareta Seydayê xwe geş û ronak bûye.

Me ji mêj ve navê Mîrza Ebdilhadî dibihîst, lê bi dîtina wî me hêj bêtir seh kiriye, ew di warê zanîn û xebatê de çiqas hêja û giranqîmet e. Seyda Ebdilhadî bi qelem, bi pere û bi xebata xwe a xurt ya kowestabûn çiye nas nake arîkariya Roja Nû kiriye. Em jê re dibêjin Xwedê te her serfiraztir û serbilindtir bike. Kurdên Bêrûtê bi piranî çûne xatirxwaziya wî û Seyda bi xîret û gotinine hêja ew irşad kirine.

# PIROZNAMA STÊRA ÇELENG

Di pêşî de ez selav û bendewariya xwe ser û pişt xwar, rengnimêjîn pêşkêş dikim; û pişt re ser û pişta xwe rast dikim û gavekê berapêş davêjim û destê Mîrê xwe digirim û digivêşim û dihejînim û havilkerî û pêkanîna we ya nemir pîroz dikim û ez bi dev û bi dengê xwe î bilind, ji ser serên çiyayên Kurdistanê bang dikim û dibêjim: divê mezinê miletê kurd weke we bin, û mirov xwedî bext û bi rastî welatparêz û ji bend û menfe'etperestiyê dûr be.

Bi rastî hon qiblegaha xebata welatparêziya dema xwe ne. Di nav gelê kurd û çi gava ko dora xwînrijandinê hati be, we xwîna xwe bê perwa rijandiye û çi gava di riya tevger û xebat û qelem û zanîn û fedekariyê hati be, hon jê dûr ne mane, û tim di pêşiya hevalan de ne.

Çiko ji xebata we yê kher, bê xircir xuya dike ko we canê riya zanîn û mezinahiyê qenc nas kiriye, û qenc dizanin; lê herin...

Mîrê mezin, we bi stêra xwe î geş û delal dîsa ala mezinahiya malbata xwe, bi ser welat û gelê kurd re bilind kir.

Mîrê min, we bawer kiriye û dîsa bawer bikin, deriyê dilê welat û xort û xwendevanên welatparêz, dilpaqij li piştî vekiriye, û ciyê warê xebata we î miqedes şên û ava û paristiye, û wê şên û ava û paristî dê bimîne, heya ko welat û dîrok û miletê kurd û Kurdistan hebe; û dîsa ez bi devê xwe û xort û xwendevanên dilpaqij û welatparêzan dibêjim kesê ko mezin e û ko dixwazin mezin bibin û mezinahiya wan paristî û bendewar bimîne divê ko fedakariyine wilo, xebata bi cî bike, da ko jê re bê gotin mezin û bi mezinahiyê tête nas kirin; her wekî ko min gotiye:

Mezin ev e ko emel û xebata wî ji wî meztir be û yê ko ne welê be, jê re ne bêjin mezin û bi çavê mezinahiyê lê me nêrin.

Amûde: LAWÊ TÊLO

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞTIYÊ

## Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî



Leşkerên Hevalbendan Di Nav Devî û Daristanan De Cengê Dijmina Dikin.



Tangine Mezin, Tangine Giran, Bi Hezaran Tang Dirêjî Neyaran Dikin û Li Rohelat û Roavayî Zora Wan Dibin.

# KURD & MEHKEME

Zelamekî kurd hebû, li bajarekî wek bajarê Bêrûtê. Dinya havîn bû, li ser remil li ber behrê radiza.

Rokê pîreka wî nexweş ket. Mêrê wê jê re got: dilê te çi dixwaze? got: dilê min zebeş dixwaze. Zêdeyî zêrekê wan pê ve tu ne bû.

Wî zelamî zêrê xwe hilanî û hat sûkê. Hat devê deriyê dikankê û go: ka zebeşkî bide min. Xwediyê dikanê jê re got: Zebeş bi zêrkî.

Ewê kurdê feqîr û bêmecal, zêdeyî zêreki wî pê ve tune. Jê re got: kuro çawan ezê zebeşekî bi zêrekî bi kirim; zebeş di nav bîstanan de bi çi ne?

Ê dikancî jê re go: deh bar zebeş bi zêrkî ne.

Ewê kurd rabû go: bi Xwedê ezê herim nav bîstana ji xwe re zebeşa bikirim, ji dêla ko ezê zebeşkî bi tenê bi zêrekî bikirim, ezê herim deh bara bi zêrkî bikirim.

Ez jî wek wan beqala li sûkê deynim, bifiroşim, zêrê xwe jî ezê qezenc bikim û ezê zebeşa têra jina xwe jî bibim.

Êw kurd rabû, pênc ker ji xwe re kirê kir û pênc zilam û go: Heyde emê herin nav bîstana, zebeşên me hene, emê barkin bînin bajêr.

Rabû çû nav bîstana, pênc bar zebeş bi zêrkî kirîn û berê xwe dan bajêr.

Hatin serê bajêr, dixuliya ji wan re gotin: ka heqê dixuliyê bidin me.

Ewê kurd go: bavo ez nizanim dixuliyê, mixuliyê, û tiştekî min tu ne ye.

Rabûn dixuliya, du bar zebeş jê standine. Hatin nav bajêr, li erdekê ji xwe re danîn, rabû beledî hat go: kanî heqê erdê bidine me.

Rabû kurd got: Bavo ji zêdî zebeşa tiştekî min tune, rabûn du bar zebeş jê standin, ma barekî wî..

Ê kurd go: ezê rabim zebeşê xwe bibim mal, berî ko vî barî jî, ji min bistînin,

Rabûn kirêçiya jê re gotin: kanî kiriya me.

Wî zelamî kurd ji wan re go;

Çar bar zebeşê min hikûmetê birin, hon jî vî barî ji xwe re bibin, bes zebeşkî bidin min.

Rabûn kirêçiya ji xwe re ew barê zebeşa wezinandin û li hev du par kirin û zebeşek dane î kurd.

Ê ko wezinandin heqê qapanê jê xwestin, ji wan re got: zêdeyî tiştekî min ne ma ye ji vî zebeşî pê ve; qapançiya ew zebeşê wî jê standin.

Rabû ev zelamê kurd go:

Bi Xwedê ezê herim mehkemê li we gilî bikim.

Ji zelamekî pirsî: go kanî mehkeme li kû ye?

Rabû wî zelamî jê re got: mehkeme ewa ha ye!

Ra bû çû mehkemê. Çû mehkemê, dî ko mehkeme ji ibadileh tijî ye. Zelamek jê pirsî; Ya feqîr, tu bi kû de herî? go. ezê herim giliyê zebeşê xwe bikim.

Wî zelami jê re go: hey mal ava îro not û neh ro mehkema î culhe ye. Wî zelamê kurd go: Bi Xwedê ezê herim bi nêrim ev çi mehkeme ye, û ezê binêrim heke adilî hebe, ezê doza zebeşê xwe bikim, ya ne, adilî tu ne be, ezê dev jê berdim, û herim mal.

Rabû qedimî, di nav xelkê de, nêrî ko zelamek li ber hakim vezilandiye, çavekî wî derketiye; û yekî din jî, ji piya ye, dike îfada xwe bide.

Nêrî ko hakim ji ê culhe re go: te çire çavê vî zelamî derxistiye?

Rabû culhe jê re go: heke adilî hebe û izna min û ştexolî hebe, biştexilim.

Rabû hakim jê re go: bibêje,

Rabû culhe go: Ya hakimê min, ez zilamekî culhe me, û deh zarokên min hene, û sê jinên min hene.

Ev pênc sal in ev kurd hêj di mehkemê de dawa doza xwe dike.

BRAHÎMÊ METÎNÎ

2ème ANNÉE LUNDI 31 JANVIER 1944 NUMÉRO 37

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## VERS LA VICTOIRE

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

La semaine a été marquée par d'importants succès militaires et politiques alliés. Les troupes américaines, anglaises et françaises ont débarqué au Sud de Rome, bouleversant tous les plans défensifs de Kesselring. Sur le Front Oriental, l'Armée Rouge continue à investir victorieusement les deux ailes des divisions allemandes qui se trouvent entre le lac Ilmen et Léningrad. Dans le domaine politique, le dernier centre de propagande et d'espionnage nazi en Amérique du Sud, l'Argentine, vient de rompre ses relations diplomatiques avec les puissances de l'Axe.

L'offensive de l'Armée Rouge sur le Front Nord fut déclenchée, il y a une quinzaine de jours, simultanément sur les deux ailes Nord et Sud des troupes allemandes stationnant dans la région située à 30 kms à l'ouest de Novgorod. Sur l'aile Nord, les troupes du Général Goronov, parties de Léningrad, poussent à la fois vers le Sud Ouest, le Sud et le Sud-Est, dans le but d'esquisser un mouvement d'encerclement aux arrières des Allemands, dont la ligne du front actuelle a la forme d'un arc fléchi vers l'Ouest.

Dans la région au Sud de Léningrad, entre Tosno et Choudovo, la situation des troupes allemandes évaluées à 25 divisions, s'est considérablement aggravée, à la suite de nouveaux succès soviétiques qui ont abouti à la prise de Gatchino et à l'encerclement de Tosno et de Choudovo. Toutes les communications des Divisions de la Wehrmacht vers l'Ouest et le Sud sont coupées. Il ne leur reste qu'une seule chaussée, pour pouvoir difficilement communiquer avec Louga, qui, d'ailleurs, se trouve sous la menace immédiate des troupes du Général Meretzkov. Gatchino dont la prise a été annoncée par le Maréchal Staline, est une base d'où partent cinq lignes ferroviaires et huit chaussées. Elle était utilisée comme centre de ravitaillement. Pour ne laisser aucun répit et aucune retraite aux Allemands, l'Armée Rouge les attaque de front en même temps que sur les deux ailes.

Déjà, les résultats de onze jours d'offensive sont encourageants. Du 11 au 25 janvier, les troupes du front de Léningrad ont tué 40.000 nazis et ont fait 3.000 prisonniers.

L'Allemagne doit comprendre désormais qu'elle ne peut plus se permettre le luxe d'abandonner des territoires à l'Armée Rouge. La Wehrmacht n'est pas aujourd'hui en mesure de tenir à la fois au Sud et au Nord du Front Oriental.

Pour le moment, sur le front méridional, Von Mannstein contre-attaque désespérement, en vue de désorganiser les préparatifs que le Général Vatoutine est sur le point d'achever pour reprendre sa marche vers la Roumanie.

La bataille de Rome a commencé. Au moment où les combats les plus violents étaient en cours sur le front principal de la 5ème Armée, front où Hitler avait ordonné à ses troupes une résistance à outrance, des forces américaines, françaises et britanniques ont débarqué en force, Samedi dernier à l'aube, au Sud de Rome. L'ennemi n'a pu leur opposer aucune résistance. Des renforts alliés débarquent, depuis une semaine, dans la nouvelle tête de pont. L'ennemi n'a pas encore réussi à se ressaisir et à réagir. Kesselring est en train de recevoir des renforts du Nord de l'Italie et de la France. Toutefois, de l'aveu même de Berlin, la tête de pont alliée est assez large et permet la concentration de puissantes forces qui déclencheront prochainement, l'assaut qui décidera du sort de Rome.

A Rome, la panique règne déjà. Les fascistes fuient la ville. L'importance de Rome est immense, du double point de vue politique et militaire. Ville historique et berceau millenaire du monde catholique, sa libération par les Alliés constituera un coup dur pour le moral de l'Axe.

D'autre part, toutes les communications de l'Italie du Nord, jusqu'à Florence et Milan, passent par la capitale italienne. Sa chute privera les Allemands du réseau routier et ferroviaire qu'ils utilisent pour ravitailler les troupes allemandes du Sud et du Centre de l'Italie.

Le gouvernement argentin vient de décider de rompre avec les puissances de l'Axe. Depuis deux ans, l'Argentine était le seul pays de l'Amérique du Sud, qui maintenait des relations diplomatiques avec l'Axe. Profitant de ce fait, les agents et espions nazis se livraient à une activité anti-alliée intense et à des actes de sabotage dans tous les pays de l'Amérique Latine.

La décision prise par Buenos Aires chasse complètement l'Axe de l'hémisphère américain et met fin à toutes les machinations que les agents de Goebbels y fomentaient.

La République du Libéria a déclaré la guerre à l'Allemagne et au Japon. Situé sur la côte occidentale de l'Afrique, ce pays a une superficie de 108.000 kms. et 1.500 000 habitants.

Le Libéria est riche en matières premières nécessaires à l'industrie de guerre des Alliés. Elle produit surtout du caoutchouc.

K. B.

## RIMBAUD - Poète Français

*C'est le 20 Octobre 1854 que naquit Jean Arthur Rimbaud. Tout jeune, son goût de l'aventure se précisa : dès l'âge de cinq ans, il dévorait les récits de voyage. A sept ans, il partageait ses lectures entre le Journal des Voyages et la Bible. Singulière prédilection : Mais dans son cerveau d'enfant, des trésors s'accumulaient.*

*Rentré au collège de Charleville, il fit preuve de nonchalance , et de mépris envers les matières qui lui étaient enseignées. Un beau jour, cependant, l'arrivée d'un jeune professeur de 19 ans, Izambart, lui fit découvrir brusquement Alfred de Musset, Victor Hugo, Théophile Gautier, Beaudelaire, Leconte de Lisle: et alors ce fut le miracle : il devint poète.*

*De 14 à 19 ans, il produisit une oeuvre fulgurante qui devait le placer au premier rang des «poètes» du XIXème siècle.*

*Tout ce qu'il avait lu, il le fit revivre d'une manière poétique et avec une extraordinaire facilité. Grisé d'air et de solitude il partit tout seul à travers la campagne, à travers les plaines et les bois, et vécut ainsi une véritable vie de bohémien.*

*Il dit dans une délicieuse poésie :*

*«Je m'en allais, les poings dans mes poches crevées.*
*Mon paletot aussi devenait idéal.*
*J'allais sous le ciel, muse et j'étais ton féal.*
*Oh ; là là... que d'amours splendides j'ai révées...»*

*Mais Rimbaud se révolte soudain. Il veut aller à Paris. Là, il verra Verlaine et Théodore de Banville. Et puis, il leur montrera ces vers d'une beauté «presqu'irrespirable» où apparait sa fabuleuse imagination :*

*«Comme je descendais des fleuves impassibles*
*Je ne me sentis plus guidé par les hâleurs.*
*Des Peaux-Rouges criards les avaient pris pour cibles*
*Les ayant cloués nus aux poteaux de couleurs...*
*La tempête a béni mes éveils maritimes*
*Plus léger qu'un bouchon, j'ai dansé sur les flots*
*Qu'on appelle rouleurs éternels de victimes.*
*Dix nuits, sans regretter l'oeil niais des falots.*
*... Je sais les cieux crevant en éclairs, et les trombes*
*Et les ressacs et les courants, je sais le soir*
*L'aube exaltée ainsi qu'un peuple de colombes,*
*Et j'ai vu quelquefois ce que l'homme a cru voir.*
*J'ai vu le soleil bas tâché d'horreurs mystiques*
*Illuminant de longs figements violets*
*Pareils à des acteurs de drames très antiques,*
*Les flots roulant au loin leurs frissons de volets.*
*J'ai rêvé la nuit verte aux neiges éblouies,*
*Baisers montant aux yeux des mers avec lenteur,*
*La circulation des sèves inouies*
*Et l'éveil jaune et bleu des phosphores chanteurs...»*

*Quels saisissants tableaux maritmes : Quel exotisme inconnu ; Et pourtant Rimbaud n'avait jamais vu la mer, ni quitté l'Europe...*

*A Paris, Rimbaud se lia à Verlaine. Tous deux firent un séjour en Angleterre au cours duquel Rimbaud écrivit «Les Illuminations». Puis ce fut le drame brutal de B r u x e l l e s, et Rimbaud écrivit à la hate «Une saison en Enfer», sorte de «confession hallucinée». adieu définitif à la poésie, «la prose française la plus fulgurante qui se puisse lire.*

*Rimbaud fut comme exorcisé du démon poétique. Il renia toute son activité antérieure, oubliant complètement qu'il avait été le poète du «Bateau ivre», des «Illuminations» et d'«Une Saison en Enfer».*

*«Quelquefois, écrivait-il, je vois du ciel, des plages sans fin, couvertes de blanches nations en joie. Un grand vaisseau d'or, au-dessus de moi, agite ses pavillons multicolores, sous les brises du matin.*

*«J'ai créé toutes les fêtes, tous les triomphes, tous les drames. J'ai essayé d'inventer de nouvelles fleurs, de nouveaux astres, de nouvelles chairs, de nouvelles langues. J'ai cru acquérir des pouvoirs surnaturels. Eh bien; je dois enterrer mon imagination et mes souvenirs»;*

*Et plus loin:*

*«Moi qui me suis dit mage ou ange dispensé de toute morale, je suis rendu au sol, avec un devoir à chercher et la réalité rugueuse à étreindre».*

*«Maintenant je suis maudit, j'ai horreur de la patrie. Le meilleur, c'est un sommeil bien ivre sur la grève».*

*Rimbaud allait partir. Sa vie de poète était terminée. Sa vie d'aventurier allait commencer.*

## LES PETITES NATIONS ET LEURS FEDERATIONS

par HUBERT RIPKA

Ministre des Affaire Etrangères p. i. de Tchécoslovaquie

— 2 —

Aussi longtemps que ces trois conditions ne sont pas satisfaites, il est, à mon avis, impossible de constituer une fédération durable et effective. Si jamais le procédé fédéral doit devenir une réalité, il ne peut être effectué que progressivement et graduellement. Avant d'être appliqué en général, il prendra probablement la forme de confédérations régionales.

Pour qu'une telle collaboration soit durable, étroite et effective, elle doit prendre deux choses en considération:

a) — Les confédérations composées de plusieurs petits Etats ne doivent jamais avoir un caractère exclusif. Elles ne doivent pas être isolées économiquement et politiquement Au contraire elles doivent collaborer et établir des contacts économiques et politiques avec le reste du monde, d'une manière laborieuse et systématique.

b)—Toute confédération régionale devra essayer d'établir des relations amicales étroites avec la grande Puissance, éprise de paix, dont elle est la voisine géographique, sans cependant négliger ou sous-estimer l'importance de la collaboration avec d'autres grandes puissances. Ainsi une confédération de petits Etats de l'Europe Occidentale s'appuiera naturellement en premier lieu sur la Grande Bretagne et la France. Une confédération de l'Europe Centrale s'appuiera principalement sur la Russie Soviétique. En même temps, la fédération occidentale devra cultiver de bonnes relations avec la Russie Soviétique et une fédération de l'Europe Centrale devra être en bons termes avec les grandes démocraties de l'Ouest.

Toute tentative tendant à ignorer les petites nations ou les conditions d'une collaboration plus étroite entre elles, toute tentative qui aurai pour cause de les faire disparaître contre leur volonté, dans un système politique n'ayant ni vie, ni réalité, serait vouée à un échec.

Strana Kurdî

# SITIYA NIMET AXA

Mûsa mere bext ne wa ye.

Kekê Kinê mereve bext ne waye.

Êvar e roava ye, wa'da berya ye, tengaya mala nêzîka kerya ye;

Delalê dilê mi suwar e, ne peya ye.

Suwarê şîn bozkê tu dibê ba ye, rextê enexdarê nava milê Kekê Kinê kuta ye...

Delal me reve, sitîya Nî'met Ẍezala kurda birîndara pênc gulla ye, xwîna sor bi ser bejna zirav quba kemberê, rûkê qonderê da rijiyaye.

Delalê dilê mi bi suwarbûnê ji mala Cerba ye, rima mala Mehemed li ser piya ye.

Serê rimê çar gulukê zîvîn pêda berda ye.

Qayîşa enexdarê milê Kekê Kinê kuta ye, zincîra ogê buhustekê çar tilya ji pêxîla Kekê Kinê ber jêr hêlkan daye.

Delal Xaîno, ne bi gefan û ne bi gurra ye;

Ne halbûna çefî û egala ye, ne bi pesnandina qîzan û bûka ye.

Kanî wexta te egal xwar dikir, ber dida nav çata her du burya ye.

Îro hêsîr tengî ye.

Da'wa ruha ye, ji berê da roja qewimandinê roja mêra ye.

Kekê Kinê mi go belkî rojkê roj biqewime tu yê hefadiyê bike li orta talanê milan û qeregêçiyaye,

Delal mi go belkî tu Bender û Budûr û Hesenê Mihêmir, her sê şuyûxê gêsa ye;

Mi go belkî tu bi qelemê, Brahîmê lawê Kora ye.

Mi go belkî tu bi ebûqatiyê tu dîşçî Hesen aẍa, ji mala Heeîya ye.

Mi go belkî bi reîsîyê tu Mehemed Emîn Kekê Lamî çîçeka Qirwalya ye... Mi go belkî tu bi xurtbûnê, tu Evdulqadir Qedûrê Kinik, Rail Elya ye.

Mi go belkî tu bi şûfê ve tu Xelîl Beg reîsê qeregêçiya ye.

Mi go belkî bi mêranîyê.

Tu Mehmûd Begê zerî, xelefa mala Temir paşa ye.

Ey xaîn lawê xaîna mi go belkî bi derba giran tu zor Brahîm paşa ye.

Bavê Evdulhemed, şêrê serê zozên, qermîtê binê Kerbela ye,

Xwedanê cumûna (kom) giran, Îskanbaşê kela kurda ye...

Xaîn lawê xaîna, çawa te terka mi Sitîya Nîmet, ẍezala kurda, dîrega konê neh sitûnî kir, û tu revyaye.

Sala çûnî vî çaẍa, ez xwarina teyrê baz bûm, îsal bûm qesasa pênc gulla ye,

Rûreşa her du bira ye. Xelkê digot delaliyê dilê te tirsonek e, ji ber Hesenê pismamê te reviyaye.

Mi go te xes e, rojkê roj bi qewime...

Şahidê kekê kinê gelek hene daîm hefadiyê dike li orta talanê, qeregêçyan û gêsa ye.

Ji delalê dilê mi wendê enexdarê zeng girtiye; derziya enexdara destê wî şikiyaye,

Delal me re kekê Kinê me re, bi şûnda li halê mi mêzeke, carkê li mi vegere êvar e, li min û kekê Kinê barî berfa kher e,

Sitîya Nîmet birîndara pênc gulaye, li erdê dev na gere, mi go belkî rojkê roj biqewime, tu ji ber temamê qeregêçîyan û gêsa tev na gere, belkî tu ne mêr e, enexdarê ji mi re dîn e û car de here.

Delal mere, Kekê Kinê mere, besta Qizil—Ûzê, Ebû—Şaxatê şe witî Bîra Edwanîyê xwar û mar e, êvar e, du suwar pêda têne xwar e, li ber çavên Sitîya Nîmet pir bûne çar e.

Kekê Kinê mere, bi şûnda li halê mi mêzeke; simalê serê suwara zer e, li ber çavê sitîya Nîmet mor bûne bûn e şa'r e.

Gullê destê suwara, li canê Sitîya Nîmet bûne, ar e.

Delal xaîno, sitîya Nîmet ẍezala kurda, dîreka konê neh sitûnî, bi pênc gulla birîndar e, mêzeke xwîna sor gulekî bi ser bejna zirav da quba kemberê, rûkê konderê da anî xwar e,

Xaîn lawê xaîna, mi go belkî rojkê roj biqewime koma qeregeçiya ji te ra ne tu bar e.

Mi nizanî bû tu fortekê nava mala, egal xwar e.

Delalê ne wa ye, bextê mêra de vaya ye.

Xwedê dîne, mala Heçîya ye, mala kora ye.

Bi destê Ubêdullah, kilê çavê Helîma kora girtine, li korta Suwêrekê girtin avêt binê hebisxana ye.

Kekê Kinê me re, rûne, şehkî lêxê, yekî bavî, halana ewilê di xwe hilde.

Bê ez kilê çavê Sitîya Nîmet ẍezala kurda, bejn zirav e.

Delal me re, xaîn lawê xaîna me re bextê mêra ne were ye.

Bi şûnda li halê mi mêzeke Sitîya Nîmet xezala kurda li pê te ye, bîst û çar derbê enexdarê li nava te ye;

Mi go belkî rojkê roj biqewime xortên qere Gêcîya temam ne barê te ye.

Qet damara namûsê vê êvarê li eniya kekê Kinê tuneye.

Halana mêra ji delalê dilê mi ra, bê fêde ye.

Mi nizanî bû tu fortekê nava mala, egal xwarê tewtewe ye.

Kekê Kinê buhara me buhareke rengîn e, li besta Qizil—Ûzê, rabû gula li bî ne, kekê Kinê me reve, mi meterkîne, mêzeke Husênê pismam devê enexdarê li çiçika Sitîya Nîmet digerîne...

Agirê çapliya agirekî no ye canê Sitîya Nîmet pır diêşîne...

Wê quba kemberê şa'ra kesrewan li devê enexdara xwe bigerîne, pol û poşman li dêmariyên mi Fatê û Fersê vegerîne;

Delal mereve, du derba bi teqîne, heger tu ne mêr e, here û enexdarê ji mi ra dîn e.

Heft qeda li bedena Sitîya Nîmet keve, hîn tu du korta ne çûye korta sisya ezê xwe, ji par ra xwe bi te gînim bi destê Sitîya Nîmet bigre mi bi xwe gîne. bi oda Kurê Birahîm paşa gîne halana ewlî di xwe;

Hilde bibêje ez kilê çavê Sitiya Nîmet,xezala kurda, xatûna pêncsed malê Ceraba, kevoka çeng bi çîn im.

EVDILHADÎ MIHEMED

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## CENG & BIHINGEH



Deryavanek Bi Dûrbîna Xwe a Mezin Karê Nobetdariyê Pêk Tîne.



Eskerên Hevalbendan Hilkişiyane Ser Tangekê û Li Dora Xwe Dinêrin.



Tangên Brîtanî Berê Xwe Dane Dijmina û Pêşve Diçin.

WEŞINGTON— Wezîrê emerîkanî ê şerî Mr. Stimson elam daye ko ji destpêka şerê eniya talyanî û heta niha xesarên emerîkanî ev in: kuştî: 2.985; brîndar: 2.504; windabûyî: 3.721.

WEŞINGTON— Duhî êvarê di civanê rojnamevanan de wezîrê emerîkanî ê şerî Mr. Stimson qala şerê Pesifîkê kiriye û gotiye: di Nû-Gîneyê de zora Japona diçe; pêşveçûna leşkerên me dom dike. Di hêla pozê Glosesterê de 3.100 eskerên japonî hatine kuştin. Di Nû-Bretanyê de qiwetên Hevalbendan çeper û kozikên dijmina, neqeb kirine.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriyê û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## CENG & SIYASET

## DEWRAN

### KURDISTAN

EXBAR-EL-HERB, 26 KANÛNA PAŞÎN 1944, HEJMAR 53.»

### Xelk Ji Welatê

Kurdistanê ê çiyayîn û spehî tiştine hindik dizanin, ji ber ko siûda vî welatî di neşriyatê de kêm e, di heq û wesfê wî de kêm tişt hatine nivîsandin û belav kirin.

Herçî teşkîlata siyasî; siûda Kurdistanê di vî warî de jî ne qenc e. Kurdên ko mixdarê wan di nav bira heşt û neh milyonan de ye, welatê wan ên çiyadar û sêgoşe di nav beyna Tirkiyê, Îran û Iraqê de hatiye lêk ve kirin, teqsîm kirin.

Birek ji Kurdan di Sûriya bakurî de ne. Êlinê biçûk di derine din de rûniştine. Kurdên Iraqê qederê milyonekî ne. Kurd ji nijadê arî ne. Wesfên wan ên xweser hene. Bi zimanekî xweser diaxivin.

Ev ziman dimîne farisiyê, lê na keve nîzingî erebiyê.

### Kurd Bi Mêraniyê

Têne wesifandin. Bi xwe jî pê iftixar dikin ko di nav miletên dinyayê de ew ê qewîtir in.

Rûyê erdê Kurdistanê Iraqê bi qasî Skotlandê ye.

Tê de bergehine welê hene ko çav kêm caran ji wan spehîtir dibînit. Wî welatî çiyayine asê û rût hene ko bilindahiya wan digehit heta 12.000 peyî. Ji serê wan çiyan lehî û robarin dadikevin nevaline bijûn, yên ko ji rêl û daristanan tejî ne.

Kurd di wan newalên bijûn û di lêf û pesarên çiyan ên nizm de birinc, ceh genim û her texlît fêkiyan diçinin; wek pirtiqal, xox, hêjîr, zeytûn, sêv û alûçan.

Hin gund û bajarên Kurdistanê bi spehîtiya bergehên xwe dikevin ber çavan. Rewandiz li ser pehnava çiyakî hatiye ava kirin.

Amediya ko bi qub û mînareyên xwe nas e, li ser girekî bi çend hezar mêtiran bilind hatiye danîn û ev bajar dikevit raserî nevaleke dirêj, ya ko diçe heta çiyayên Îranê. Ev bajêr bi çelengiya xwe dimîne şaristanên efsanewî yên ko kitêbên qedîm wesfên wan dane.

Heçî Akire, Pênowîn û Koysineeq bajarine piçûk in, lê bi spehîtiya xwe dilriba ne. Di Kurdistana Iraqê de Silêmaniye bajarê meztir e.

### Kurd Miletekî Çiyayîn

û qewîn e, bikeve ber kîjan zehmet û dişwariyê jî, ji heq dertêt, û jiber vê yekê, li ber dilê xelkê şîrîn in.

Kurd hetanî îro cilên xwe ên nijadîn li xwe dikin, destmaleke mezin li kumê xwe wer tînin; çaket û pantoleke fireh werdigirin. Cawê, citê wan qimaşekî hişk e, û wî cawî di malan de bi xwe çêdikin. Bi piranî rengên wan hel yanî sekirî ne, ji ber ko kurd ji wan rengan hez dikin.

### Herçî Ûçikên Wan

qederê du yardan dirêj in, û gava wan li xendên xwe dipêçînin ew wek şaşikekê dixuyin.

Li Iraqê kurd di ziman û giredana xwe de serbest in. Bi gotinên din di Iraqê de kurd Xwediyê heqine milî ne û ji cinsiyeta iraqî fêdemend dibin.

Kurdistana ko rojekê dikare bête danîn wê çawan bibe? me bi çend pirsên kurt wesifandiye

Ev welat dikarê rojekê bibe Sviçreya Rohelatê Navîn.

# DI ORTA PESIFIKÊ DE

MELBURN— Qiwetên emerîkanî en mezin yên ko hefta borî di Orta Pêsifîkê de dirêjî khergiravên Marşalê kiri bûn, li gora nûçeyên dawîn bi serfirazî şerê japona, dikin û ji nû ve pê li erdê du giravan kirine.

LONDRE— Piştî ketina Ordiya Sor axa Polonyayê, welatperwerên Polonî hêj betir berberiya elemana dikin û wan welatparêzên he midîrê Warsovayê ê polîsê—yê ko eleman bû—û pênc karkerê din kuştine. Li ser wî elemana sed poloniyên hêja dane ber tifinga

# DANEZANA HEVALBENDAN

Qerargeha Hevalbenda a Mezin li eniya Behra Spî dide zanîn: Di eniya Ordiya pêncan a bingehîn de, li hêla Kasinoyê şer bi awakî xurt dom dike; di bakur û roavayê vî şaristanê de yekîneyên me ji nû ve pêş ve çûne. Di qada Anzioyê de yekîneyên brîtanî, emerîkanî yên Ordiya Pêncan gelek ber-êrîşên elemana paş ve birine û hêsîr girtine. Leşkerên Ordiya heştan pêş ve ketine û bajarên Pizo—Ferato û Montene Rodomo standine.

Bombeavêjên me ên navhincî li rê û rêhesinên Ortayê û li gehîneka rêhesinan ya Fraskatiyê dane ber derbên xwe. Bombeavêjên Hevalbendan ên sivik li rê û rêhesinên bakur û nîroyê Romayê xistine.

Nêçîrvanên me di ser qada şerê Anzioyê re firiyane, karê xwe ê dîdevanî û nobetdariyê pêk anîne û zor dane dijmina.

Bombeavêjên Hevalbendan ên navhincî di Behra Edriyatîkê de bi ser waporên dijmina de girtine û lêxistine. Di vê navê de deh balafirên dijmina hatine avêtin erdê. 13 mekîneyên me venegeriyane warên xwe.

MOSKÛ— Bi awakî resmî didin zanîn ko yekîneyên Ordiya Sor ketine taxeyên Nîkopolê.

MOSKÛ—Şevadî refên sovyetî, ji bombeavêjên giran bihevketî dirêjî payetextê Fenlandyayê Helsinkî kirine û li hêjagehên eskerî xistine, 5 mekîne venegiyane warên xwe.

## ENIYA BEHRA SPI

LONDRE— Di nîroyê Romayê de qiwetên Hevalbendan bi xurtî şerê dijmina dikin. Birek ji bajarê Kasinoyê hêj di destê elemana de ye; topçiyên hevalbendan riya vî bajarî bi xurtî bombardiman dike.

Di pêşiya serpira Anzioyê de elemana bi yekîneyine S.S. pitşa qiwetên xwe xurt kirine.

Êrîşên elemana hatine paş ve zivirandin û xesarine dijwar gihane wan; her çend ji elemana bi tangên giran emel dikirin. Di vê qadê de hewa çêtir bûye û gaziya hevalbendan hatiye; wextekî nîzing de hevalbend di vê eniyê de, dest bi êrîşine mezin bikin.

STOKHOLM— 200 bombeavêjên sovyetî dirêjî payetextê Finlandyayê Helsînkî kirine; bi derbên bomban cih bi cih agir bi vî bajarî ketiye. 38 peya hatin kuştin û 232 heb jî brîndar bûne.

# Kovareke Kurdî a Nuh

### DENGÎ GÎTIYÎ TAZE

Heta niho posta Iraqê ji me re «Jîn» û kovara kurdî a hêja «Gulavêj» dianî û em bi wan şa dikirin. Îcar vê postê çavên me bi kovareke nû bi ronî kirin. DENGÎ GÎTIYÎ TAZE. Gîtî an kîtî bi mana dinyayê ye, bi kurdmanciya me: Dengê kîtiya taze.

Kovara me a nû bi her awayî hêja û sezayî her pesn û şikranê ye. Dengê kîtiya taze kovareke mezin û biresim e. Her rûpelê wî bi qasî rûpelekî Roja Nû ye û hejmara wê a siseyan — ya ko gihaşte destên me — ji 48 rûpelan hatiye pê.

Ev kovar sefartxana brîtanî ya Bexdayê bi xwe derêxistiye û ev tişt li ser kovarê hatiye nivîsandin. Ev kovar ji aliyê ingilîzan ji kurdan re diyarîke mezin û giranbeha ye. Me ji hikûmeta qralî gelek minet e û em spasên xwe ên bêpîvan pêşkêşî wê dikin û ji kovara me a nû re jiyîneke dirêj û kamiran hêvî dikin.

# DIYARÊ STÊRÊ

*Mîrê Botan, Serekê Xortan*
*Kamiran Alî Bedir-Xan*

Her bijî xwediyê Stêrê, tevî jîna nejadê xwe ê ber mirad û raman. Her kurd û nemaze xortên xwendevan minetkarê xebata we ne û azahî û serxwebûna xwe, bi havila pispor û fedakarên wek we hêvî dikin. Belê em bi xebata we bawer in ko miletê me berxudar dibe û ev Stêra ko derketiye, Stêra bextê me ye. Belê ew hilavêtiye her wekî Xanî gotiye: «Tali bibitin ji bo me kewkeb», belê li gora her derketin û hilavêtina, diva bû ko Stêr berî rojê biderketana, lewre dibin tîrêjên rojê de Stêr xuya nake, ji ber ko ewrê dekariyê (siyasetê) di ezmanê azahiyê de mij girtiye.

Lewre ko Stêra Mişterî xwe daye rex rojê û diçirise, ji xwe roj bê stêr na be.

Ew kilora bin navê Stêrê, ma ne erdê Kurdistanê ye?

Ew e zolika inwan di nav de, ne parça gewir ji ala rengîn e.

Ew klîşa wê Jandarka çeleng û dilhesin û gurçikpola û kirdeyên xebata wê ne jibo dilgermî û navtêdanek ji gelê me û bîraniyek ji neyarê Fransa re ye?

Ew Fransa ye ko, zînet û ronahiya cihanê, bi niftika wan vêket û pisporê wek Monteskiyo rêzana ayê beşer pêşteva destdirê jan kir.

Îro jî, egîd û xwînrêjên wek general De Gol û hevalên xwe bi dilekî xurt û dengekî bilind gazî dikin û dibêjin.

Ho !... Frense, ên bin sî, dilgeş û haydar bin û qenc bizanin ko bayê zeferê dilê xortên welatî, ewrê sitemkariyê daye ber xwe û ber bi Zigfrîd û Majino ve dibezîne.

Belê mezin û xebatkarên me jî, wê navtêdanê di me didin û dibêjin:

Lo... xortino.. ma ji me re ne pesn e ko gelê wek Frensê navdar û bingehîn îro bûye hevalek me î brîndariyek dil bixwîn, em hêvî ji Yezdan û zendê xortên dilawer dikin ko van her du miletan vejînin û dîsa bên ser kewna xwe a berê, her wekî kurdmanc dibêjin:

«ji giya nermtir tune, di bin
« kevir de na mîne.

« Xwelî li wî dilî be ko têde
« birîn û ramanek tune be. Heyif li wî maldarî be ko jarî û belengazî ne dî be.

« Bawerî bi wê hikûmetê nayê ko dilî ne dî be.

«Mexabin ji wî bijişkî re ko
« birîn û nexweş ne dî be.»

Her roj sed carî pîroz, ji devê xortên welatî, ji Stêra zelal re, ezbenî, Mîrê min.

Amûde : Hesen Hişyar

BERLÎN— D.N.B. elam dide ko di nîzingî peravên Japonyayê de, waporeke Japonî ko tê de 700 peya hebûn hatiye bin av kirin,

# DEMA NIHA

LONDRE— Kral û kralîça Ingilistanê çûne ziyareta Qerargeha mezin a bombeavêjan.

MOSKÛ— Di vegirtina serpira Nikopolê de yekîneyên Ordiya Sor 23 tang, 217 qumbereavêjên çeperan 320 mitralyoz 1.277 otomobîl 520 firgon cebilxane dagirtî û zehf çek û silehên elemana ên din xirakirine. Leşkerên sovyetî ji aliyê din 24 tang, 392 top 180 qumbereavêjên çeperan, 473 mitralyoz 4.000 tifing û otomatîkên sivik, 1.686 otomobîl 86 traktor, 171 motosîkil, 20 depoxane standine û 3.000 hêsîr girtine.

## Strana Kurdî

# SÊVOKA HECI

— 2 —

Mîr Mehmûdê Cindî, lawê mîrekê Palo sibehê roha taştiya,

Çavê xwe ji xewa şîrîn vekiriyê,

Li dora xwe nêrî ko tiştek tuneyê.

Bi dilkî kul î şikestiyê, derket ber devê deriyê;

Nêrî ko bavê wî, li ber devê derî sekiniyê.

Bavê Mîr Mehmûdê Cindî, li madê mîr Mehmûdê Cindî nêriye;

Nêrî ko madê wî giran e go:

Lawo, ruhê min bi qurbana ruhê te be, hewala te çi ye?

Go—ya bo, min şevêçûyî, xewnek ji xewnên şevan diyê... ez ne ma zanim, ne xewna min şeytanî ye û ne xewna min î rehmanî ye.

Mîrekê Palo go:

Lawo, mîr Mehmûdê Cindî, xewna te î şeytanî yê, ev şixlê şeytanî l'anetiyê;

Gava ez xort bûm, ez li cem mala bavê xwe bûm, min gelek caran xewnên wilo diyê,

Şeytanê l'anê lê hat, xwe dixe şibyetê qîzê xelkê, tê li civatê xortê qenc sekiniyê.

Wê gavê Mîr Mehmûdê Cindî go pirq û keniya, go:

Ya bo, xewna min ne şeytanî ye, xewna min î rehmanî ye.

Ya bo ma ev navê kê ye, çi li ser nivîsî yê.

Bila Xwedê bike miradê miradxwaza; miradê lawê te jî bike bi Sêvoka Heciyê.

Tev lo dilo, tim lo dilo

Dil bi kulo dilo...

Wê gavê Mîrekê Palo li madê lawê xwe nêriyê, go:

— Lawo Mîr Mehmûdê Cindî hewala te çiyê?

Mîrekê Palo li madê Mîr Mehmûdê Cindî nêriyê, nêrî ko dihin bûye, ismê aqil li serê wî tu niye.

Tew lo dilo, tim lo dilo

Dil bi kulo dilo, rezîlo dilo..

Tîrê xeybaniya lê keto dilo..

Wê gavê Mîrê Palo rabûye piy

Hêdîka bi lingê Mîr Mehmûdê Cindî girtiyê, qeyd û merbend li xistiyê: xist odekê û derî lê xelî qandiyê:

Mîrê Palo çû cem şêx û mela, jê re nêriyê...

Ne ezîmak hiştî bû, û ne kitêbek hiştî bû, çara Mîr Mehmûdê Cindî li dinyayê ne diyê.

Mîrekê Palo êdî rabû piyê;

Xelat li heft eşîrên Palo bela kiriyê...

Dawet bi heft def û heft zirnan li dar daniyê

Çiqeys xort û qîz li wan welat û şaristana hemî civandiyê;

Heyanî ko dawet tekmîl bû... Wê gavê Mîrekê Palo, hati bû li ber Mîr Mehmûdê Cindî sekiniyê. Mifta li qeydê xist, qeyd ji lingê Mîr Mehmûd bi der xistiyê.

Bi çeplê Mîr Mehmûd girtî bû, anî bû li ber serê dîlanê sekinandiyê; heya di dawiya dîlanê biderxistiyê.

Mîr Mehmûdê Cindî go;

Yabo, Xwedê hebîne hewala te çi ye?

Bavê Mîr Mehmûdê Cindî go:

Ya lawo, Mîr Mehmûdê Cindî, ji xwe re, li vê dîlanê binêr, hevqas qîz mi li vê dîlanê civandiyê, tu destê xwe li ser kîjan deynî, ezê ji te re binim bi helaliyê...

Wê gavê Mîr Mehmûdê Cindî, li devê bavê xwe dikeniya, go:

Yabo, çi qehbeta giran, te bi serê min de aniyê?

Bela Xwedê teala bike miradê miradxwazan û miradê lawê te jî yê mîr Mehmûd bike bi Sêvoka Heciyê.

ne qediyaye —

# YANEI SERKEWTIN

Pêş çend heftê êk le kovare pîrozeketan da basi «Yaneî Serkewtin» kerabû. We her çend nazanim le çi seruçaweik wergirawe, belam her bo ewey ke be tewawî agadarî rastî bin em dû sê derey xwerewem nûsî:

Em yaneye her wekû le «pêrewî Yane» da nûsrawe le layenî Marif Çiyawûkewe damezrawe be pêy goqrazî Wezareti Daxiliye «Jimare 6895 we mezû 19-20 mayis salî 1930».

Eme çarde sale, her be yarmetî we xiretî em kurde xweşewîsteman yane jiyawe egerew nebwaya le mêz bû mirdibû. Heta parsal hei malî xwoy kirdibwe yane, we xeşqî le wê ko debûnewe, roji penc şeme bo jinan, we roji heîni bo piawan, we mesrefî em kobûneweş hemû le kîseî xwoy dawe. Cenabî Marûf Beg le medarisi Alîya maazûna: le Darul Finûn şûbeî Adebiyat, we le Medresa Hiqûq, eme 45 sale be işî kûrdiyewe xerîke.

Le salî 1943 hawin be qerarî «Komelî Nawçê» be xoy we Sekertêr Abdûlrehman Nuriçan bo Şimal seferyan kirdibû bo kokirdneweyi «Teberrûat» we be himmetî em zate «6.000» dînar kokrawe.

We êsta yane xanûekî rêk û pêkî heye, pir le mobiliyay baş ke, le hîç yaneî tir da nîye. We dergay kraytewe bo hemû lawî têgeyiştû, we piyawî gewre, gewre hatû ço deken.

We her rojî, heyni wûtarî be nêrx, we goranî kurdî niştimanî debêjriê.

Ewçe pêwistê her çi kovarekî hetana we botan de eger detwanîn boman bnêrîn be adresî xwarewe:

Bagdad Mehelleî top Alwaziya Nadî el Irtiqa «Yaneî Serkewtin» Mûatemedî Am «Çiyawûk». SORAN

# MIREKA CIHANÊ

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞITIYÊ

## Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî



Ev eskerê Frensiz Mîna Terkeserên Dinyayê Rih Berda Ye, Lê Belê Dilê wî De Eşq û Agirê Welêt, Bûye Şerevanî



Xortên Ingilizî Mîna Çirîsk û Brûskan Dimeşin û silav Li Ala Xwe Dikin. Ev Xortên hêja ji bona azabî û Serbestiya Cihanê Xwîna Xwe Direjînin

2ème ANNEE — LUNDI 17 JANVIER 1944 — NUMERO 18

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. · Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Cette semaine a été marquée par d'importants évènements politiques et militaires. Ayant pris Nikopol, l'Armée Rouge avance entre cette ville et Krivoi-Rog. Des unités d'avant-gardes soviétiques se trouvent à une dizaine de kilomètres de la ligne ferrée vers Kherson, à 80 kms. de Nikolaev. Krivoi-Rog, important bastion allemand, se trouve directement menacé. Il est possible pourtant que les colonnes du Général Malinovsky ne donnent pas immédiatement l'assaut de la ville, car l'objectif immédiat de l'Armée Rouge est constitué par Nikolaiev et Kherson, les deux portes de la Mer Noire.

On voit que l'Armée Rouge célèbre à sa façon l'anniversaire de la prise de Stalingrad. Car, en plus de l'avance des forces commandées par le Général Malinovsky, l'encerclement total de 10 divisions allemandes dans la boucle du Dniepr a été achevé par les Généraux Koniev et Vatoutine. Les troupes soviétiques ont déjà commencé la réduction de ces forces allemandes, dont le dégagement paraît impossible, le gros des soldats de Von Mannstein se trouvant à 100 kms. plus à l'Ouest.

A l'autre bout du Front Oriental, c'est-à-dire dans le secteur de Léningrad, l'Armée Rouge a remporté d'autres succès. Ayant définitivement dégagé la capitale du Nord d'un siège qui durait depuis deux ans, les Généraux Govorov et Maretzkov sont actuellement en train de renfermer les deux bras de la tenaille autour du groupe d'armées allemand de von Kuehler, en retrait sur tout le front, de la région de Louga jusqu'au secteur de Novgorod.

Tandis que la bataille pour Rome est engagée au Sud de l'Italie sur le front principal de la 5ème Armée, les vaillantes troupes françaises et américaines ont enfoncé la ligne Gustave sur un front large de plusieurs kms., au Nord de Cassino. Les correspondants de guerre sont unanimes à souligner la valeur des combattants français. C'est ainsi que le commandement allemand s'empresse de renforcer chaque secteur où il constate leur présence. Car les soldats de la France sont conscients de leur mission. Ils connaissent le vieux proverbe: «Tous les chemins mènent à Rome.» Ils disent aujourd'hui que la route de Rome conduit en France.

Aujourd'hui, le Wehrmacht est en difficulté, aussi bien en Russie qu'en Italie — et que dans les Balkans. Une crise sérieuse règne en Bulgarie, où les patriotes sont très actifs. Les Allemands y ont envoyé le sinistre Himmler, dont la présence n'a pu empêcher les soldats bulgares de rallier les partisans yougoslaves du Maréchal Tito.

L'Armée de Libération populaire de Tito, forte de 300.000 hommes, est un véritable cauchemar pour Hitler. Après avoir combattu longtemps avec les seules armes prises à l'ennemi, Tito reçoit maintenant une aide alliée efficace. Il contrôle près de la moitié des territoires yougoslaves et prépare la prochaine invasion alliée, dont son armée est l'avant-garde.

Tito immobilise plusieurs divisions allemandes en Yougoslavie, en Italie et ailleurs. Privé de troupes de réserve en nombre suffisant, le Haut Commandement Allemand envoie des troupes bulgares et hongroises contre l'Armée Populaire de Libération. Mais les Bulgares désertent dans les rangs des partisans. Quant aux Hongrois, ils ne savent comment sauver leur peau. Budapest affirme sans cesse que les Hongrois ne combattent ni en Russie, ni dans les Balkans.

Le but de ces démentis est évident. Le Gouvernement Hongrois veut éviter le châtiment de sa complicité avec l'Allemagne. Mais Radio Moscou vient d'établir la présence de 12 divisions hongroises sur le sol russe. De son côté, Tito rapporte que d'autres unités hongroises combattent en Yougoslavie. Ainsi, la collaboration de la Hongrie avec le Reich est flagrante et elle devra la payer un jour.

## KURDISTAN

## SUISSE DU MOYEN-ORIENT

Un article de l'«AKHBAR EL HARB»

On sait peu de choses sur le beau pays montagneux du Kurdistan, car il n'a été décrit que rarement, alors que son morcellement politique a fait l'objet de nombreuses publications.

Les Kurdes, qui totalisent de huit à neuf millions d'âmes, habitent un triangle montagneux situé dans les territoires turc, iraquien et iranien. Une partie de ce peuple vit dans le Nord de la Syrie et de petites communautés kurdes sont dispersées à l'intérieur de ce pays. En Irak, leur total est d'environ un million.

Les Kurdes sont de race aryenne, il présentent des traits caractéristiques et parlent une langue qui ressemble au persan, mais diffère complètement de l'arabe. On sait qu'ils sont robustes ; ils sont considérés comme le peuple le plus vigoureux de la terre et en sont justement fiers.

La superficie du Kurdistan iraquien égale celle de l'Ecosse. Là se trouvent les plus beaux paysages que l'oeil humain puisse contempler. Des montagnes sauvages s'élèvent parfois à 4.000 mètres d'altitude, à leurs flancs coulent des ruisseaux et des torrents qui s'élancent vers les fertiles vallées, couvertes d'arbres fruitiers et de forêts.

Dans ces vallées et sur les premiers contreforts de leurs montagnes, les Kurdes cultivent le riz, l'orge, le blé et différents fruits, tels que les oranges, les pêches, les figues, les olives, les pommes et les abricots.

Certaines villes et certains villages kurdes sont d'une beauté exceptionnelle.

Rawandous a été construite sur le flanc d'une montagne ; Amadia, célèbre pour ses coupoles et ses minarets, s'élève sur un pic immense. De là, on domine une vaste vallée de toute beauté, qui s'étend jusqu'aux lointaines montagnes de l'Iran.

Par la beauté irréelle de son site, Amadia fait songer aux villes féériques des contes antiques.

Penjwîn et Koysandjak sont de petites cités de montagne dont le charme particulier émeut le coeur du voyageur. La plus grande ville kurde de l'Irak est Souleimanieh.

Le trait qui frappe et qui attire chez les Kurdes, c'est leur caractère de montagnards patients et actifs qui leur permet de vaincre les difficultés et le dur travail qu'ils ont à affronter.

Ils portent encore le costume national qui se compose d'un large turban, d'une veste et d'un pantalon, taillés dans une toile rude, aux couleurs vives, qu'ils fabriquent eux-mêmes. Une ceinture entoure leurs hanches, et leurs manches, dont la confection demande souvent deux mètres d'étoffe, et qui sont enroulées autour de leurs poignets, donnent parfois l'impression que leurs mains, elles aussi, sont coiffées de turbans.

En Irak, les Kurdes ont le droit de parler leur langue et de porter leur costume national. Ils peuvent développer leur culture propre et exprimer leurs sentiments nationaux, tout en bénéficiant de la nationalité iraquienne.

Notre courte description indique ce que pourra être l'avenir du Kurdistan. Ce pays pourra un jour devenir la Suisse du Moyen-Orient. En ce moment d'ailleurs, la Direction des Chemins de Fer et les Services des Travaux Publics de l'Irak, encourragés par Son Altesse Royale le Régent, sont en train de choisir les sites ou s'élèveront des hôtels et des bâtiments nouveaux.

## LES DENTS SERREES

*par JEAN AMY*

Je hais. Ne me demandez pas ce que je hais.
Il y a des mondes de mutisme entre les hommes,
Et le ciel veule sur l'abîme, et le mépris
Des morts. Il y a des mots entrechoqués, des lèvres
Sans visage, se parjurant dans les ténèbres.
Il y a l'air prostitué au mensonge, et la Voix
Souillant jusqu'au secret de l'âme.
Mais il y a
Le feu sanglant, la soif rageuse d'être libre
Il y a le sang qui commence à peine à couler,
Il y a la haine et c'est assez pour espérer,
Il y a des millions de sourds, les dents serrées.

## A propos du centenaire

## D'ANATOLE FRANCE

*S'il est une intelligence qui réflète tout le travail intellectuel du XIXème siècle avec ses tendances diverses et contradictoires, c'est bien celle d'Anatole France. Comment, cette intelligence a évolué, il n'y a que ses livres qui peuvent nous l'apprendre.*

*Il a commencé par être un parnassien sensible à la façon de Chénier, dans ses «Noces Corinthiennes».*

*Puis il se tourna vers le roman. Mais quels romans devait écrire Anatole France ? Est-ce des romans d'aventures, de moeurs, de thèse? Au fond, il en a écrit de tout genre. Cependant, une caractéristique qu'il faut bien noter, c'est qu'il part toujours d'un sujet mince, quel que soit le roman qu'il écrit : Un pauvre garçon qui aime une actrice et qui, après quelques années de vie difficile, est tué par hasard pendant la Commune, et voilà «Jean Servien», un vieux savant envoie pendant l'hiver du bois à sa voisine, une malheureuse femme en couches. La femme, devenue princesse russe, en récompense du bienfait du savant, lui offre un livre précieux dont il avait envie : voilà «La Bûche», ou aussi : un vieux savant s'intéresse à une orpheline dont il a aimé la grand' mère, l'enlève de sa pension où elle est malheureuse, et la marie à un élève de l'Ecole des Chartes, et c'est «Le Crime de Sylvestre Bonnard».*

*Si en général le sujet est peu de chose, les personnages vivent. Il a peint des inconscients, des êtres incapables de se replier sur eux-mêmes.*

*La série en est admirable. Voici M. Godel-Laterrasse, le mulâtre penseur, tout plein de vanité. Voici Télémaque, ancien général nègre, devenu marchand de vin et qui a des extases devant la défroque de sa gloire passée. Voici le marquis Tudesco, le proscrit italien ; M. Fallaire de Sizac, l'homme d'affaires; M. Haviland, l'Anglais qui collectionne dans des flacons l'eau de tous les fleuves, et combien d'autres. Mais Sylvestre Bonnard est la figure la plus originale que le Père France ait dessinée. C'est l'homme du XIXème siécle, vieux savant célibataire, très intelligent, très réfléchi, très ironique et très doux. Et cette figure est vivante.*

*Mais il ne faut pas oublier le «Livre de mon Ami». «Ce Livre» disait Jules Lemaître, «plair» aux mères, car il parle des enfants. Il ravira les poètes, car il est plein de la poésie la plus naturelle et la plus fine à la fois. Il contentera les philosophes, car on y sent à chaque instant l'habitude des méditations sérieuses». Ce qu'il y a dans ce chef-d'oeuvre, ce sont les impressions d'un enfant très précoce, d'un enfant qui sera passionné des formes, des rêves et des contemplations. Je cite spécialement comme merveille de psychologie enfantine, le chapître où Pierre, imitant les saints qui se dépouillent des biens de ce monde, jette ses jouets par la fenêtre :*

*«Cet enfant est stupide» s'écria mon père en fermant la fenêtre.*

*«J'éprouvai de la colère et de la honte à m'entendre juger ainsi. Mais je considérai que mon père, n'étant pas saint comme moi, ne partagerait pas avec moi la gloire des bienheureux, et cette pensée me fut une grande consolation».*

*Le scepticisme chez notre écrivain est doublé de l'ironie souriante. Cette ironie est douce, calme et s'insinue partout. Continuelle et volontaire, elle est le ton habituel d'un homme qui s'étudie et étudie les autres.*

*Ironie et tendresse ne supposent pas seulement un esprit étincelant et une fine sensibilité, mais une science étendue, l'habitude de la méditation sur l'homme et sur le monde et la connaissance des philosophies qui essayèrent d'expliquer ces deux inconnus.*

*Ai-je besoin de parler de son style ? Ses ennemis les plus déclarés comme ses admirateurs les plus fanatiques, sont d'accord à dire que son art est inimitable. C'est qu'en effet, nourri des lettres grecques, il a conservé comme son dieu Racine, le culte de l'élégance et de l'exactitude. Joignez à cela la peur de la rhétorique et de l'emphase. Anatole France est le dernier représentant de cette lignée de dilettantes et sceptiques qui part de Montaigne et se continue avec Diderot, Voltaire et Renan.*

M. M.

Strana Kurdî

# HEDKA QASO
## & HESENÊ MUSA

Hey wax, hey wax, mala minê heyfa çavê Hesenê Mûsa ax ketinê.

Heyfa canê torinê mala Mûsa kurm ketinê, hey wax, hey wax mala minê.

Hedo ban kir, Hesen qurban bira, li me nehata îda wan Hecîya!

Ez û torinê mala Mûsa, me xwe berda binya mala rex gelîya.

Ez û Hesenê Mûsa sekinîn li bin dara van mazîya,

Me ji xwe ra, dest kir, bi ken û henek û laqirdîya,

Hesenê Mûsa destê xwe avêt ristikê morîyê mi qetiya;

Me berev kirin hil û morî, bi tilîya;

Mi dî du tiving li Çiyayê Mazî li me teqîya;

Mi dî torinê mala Mûsa li cem mi ketî bi dev û ruya;

Wek dara sipî darê wergerîya,

Mi hisab kir, mi go belkî vana nêçîrvanê mala me ne, davên seyda pezkûviya;

Mi dî Ehmê Qaso bi sê denga, li mi qûrîya, ban kir go:

Hedokê dêlê, mêzeke birîna Hesen li ku ketîya,

Mi go: mala we bişewite we lêxist li mihrika piştê gurzê, piya birîn yek e, xwîn jê davî bi du ciya;

We kuştiye torinê mala Mûsa, şêrê serê çiya,

We ûcaxê mala Mûsa kor kir, çira mala Mûsa ji binda wergeriya.

Hey wax, hey wax mala minê:

Hesenê qurban ro hilatî, ji hel û bela şewqê xwe da Mêrdîna şewitî, qesrê pirota, minarê mella

Mi dî qîz û bûkê mala Qaso teşt û sîtil girtin, çûne cilla,

Mi go rebî tu zatekî pir mezin e, belkî tu şaya topkê bavî, şûna kula mi por kurê:

Hesenê Mûsa birîndar e bi çar gulla;

Hey wax, hey wax mala minê;

Hesen qurban, mi bengîn sed car bengîn;

Mi dî torinê mala Mûsa serê xwe girêda bi kumê omerî, bi desmala qehwe rengîn; Mi dî dengê tivingê mala Qaso ketin Çiyayê Mazî, Xaroka rengîn;

Hesen qurban, dilê xelkê giştikî dil bû, dilê min û Hesenê Mûsa li Çiya yê Mazî bû derengîn;

Kuştina torinê mala Mûsa li çiyayê mazî li nav neyara bûye dengîn;

Hey wax, hey wax, mala minê.

Hesen qurban, Çiyayê Mazî bi dûman e torinê, mala Mûsa tembûr van e, mi tembûra torinê mala Musa ji gulika xemilandine;

Ez û torinê mala Mûsa li binya mala, rex gelîya, tim meşiyane;

Min û Hesenê Mûsa, me ji xwe ra dest kir bi ken û henek û laqirdiya ne;

Hesenê Mûsa destê xwe avêt qorê morîyê mi, giş qetiyane,

Mi dî du tiving li çiyayê mazî, li me teqiyane, torinê mala Mûsa keti bû bi dev û ruya ne.

Me hesab kir, mi go belkî vana seydvanî ne, nêçîrvan in, ji xwe ra davî seyda pez kûvya ne,

Mi dî simikê fêdo Elîyê Ce'fo Ehmê Qaso, bi sê denga bi ser mi da li mi qûriyane;

Ban kir go Hedo dêlê, mêzekê, Hesenê Mûsa birîndarê çend gullan e;

Mi go mala we bişewite, maşalê nav û dilê we bigerin li daran û li deviya ne; We lêxistî li mihrika piştê gurzê piyan e.

We kuştine torinê mala Mûsa, şêrê di çîya ne;

Hey wax, hey wax, mala minê,

Hesen qurban, mi go bira li me nehata îda vê qurbanê, mi dî vê sê qîz û bûkê mala Qaso, bejna xwe xemilandin çûn govendê, çûn dîlanê;

Xortê mala Qaso zo bi zo bûn giştan rahişt tivingê modelî, giş herikîn ber nîşanê,

Ez pejna torinê mala Mûsa vê sê nakim ne li cemaetê, ne li meydanê.

Hey wax, hey wax, mala minê;

Heseno qurban ji teyran teyrê bejî mi danî li sanca Qaso;

Ser wî hejî birîna xelkê giş birîn bû, birîna Hesenê Mûsa fitlek davî xwîn û yek tê mejî;

Hesen ban kir: Hedo dozmamê, tu bes bigrî bi delalî, bira subhanî xwe ji çavê ta reş û belek ne be xalî, a hatî serê min û Hedoka Qaso bira nê, serê nebî Eyûbê kurmo xwarî;

Hedo ban kir Hesen pismamo, tu bes binale, ji ber kezebê hey mi qatilê, mi sebebê;

Hey wax, hey wax, mala minê;

Hesen qurban, mêrga Buloka çi rengîn e, ez û Hesenê Mûsa me bi destê hev girt, bi eşq û kêfeke mezin, wek ziyaretvanî herin Sîne;

Em biskê li bin dara mazîya sekinî ne, mi dî du tivinga li çiyayê mazî bû teqîn e mi dî torinê mala Mûsa keti bû bi ser mi da, bi çar gulla, bi birîn e; mi hesab kir, mi go belkî vana nêçîrvan û seydvanî ne, mi dî Simê Fêdo û Elîyê Ce'fo û Ehmê Qaso bi sê denga bi ser mi da bû qûrîn e;

Bankir go: Hedokê dêlê, mêzeke tu birîna Hesen li ku dibîne,

Mi go: lawo maşalê hûn bin Xwedê, nav û dilê we bi daran û deviya bigerîne, we kuştine torinê mala Mûsa, birîna Hesenê Mûsa fitlek davî xwîn e.

Hesen ban kir go: Hedokê, dozmamê, ez diki bimrim birîna mi mezin e, pir dêşîne, tasek ava xarokê bi mi gihîne.

Hedo got: Hesen pismamo di pê te ra kesek mi na hewîne, ezê du ta ji temerya te biquşînim di bêriya cubbe xînim:

Heçî cara tu bi bîra mi ket, ezê bigirîm û maç kim, pê kerba dilê xwe bi derxînim, mi ne heqya mala Qaso qebûl kirî, rebî tu hilnî ne.

EBDILHADÎ MIHEMED

SÎDNEY— Li gora telegrafên dawîn yên ko ji Nû Bretanyê hatine, silehendazên emerîkanî yên ko ji sê aliyan bi nav erdê Nû-Bretanyê de pêş ve diçûn, qerargeha generalê Japonî Natzûda standine.

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## CENG & BIHINGEH



Ne Bitenê Mêr, Lê Dot û Jin Jî, Di Cengê Azahî û Serbestiya Cihanê De, Karine Hêja Pêk Tînin. *Moto*sîkilsiwareke Emerîkanî.



Topeke *Mezin*, Ji Qiwetên Frensa Şerevanî.



Ji Bergehên Cengê Cihanê, Qefletangeke Hindî a Mezin.

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

Sal 2 — Hejmar 39

# ROJA NÛ

Duşemb 21 Sibat 1944

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 10 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 10 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## CENG & SIYASET

## DEWRAN

Cihan, piraniya miletên dinyayê, ji nû ve baweriya xwe bi Xwedê tînin, delîlê vê baweriyê eve ko qîma xwe bi heq û bi azahî û serbestiya cihanê tînin û bi heq û serbeştiya miletên cihanê qail dibin. Xwedê heq û edalet, serbestî û azahi ye, her tiştê pak û qenc, her tiştê bilind û hêja ji kerema Xwedê ye, û ew tiştên he, bi qencî û mezinahiya Xwedê ve, girêdayî ne û mensûb û aidê wî ne. Di qiyametê de cenet, bihûşt, para mirovên qenc e yên ko li dinyayê bindestiya emrên Xwedê kirine û bikêrî nefsa xwe, welat û miletê xwe hatine. Cehenem, dojeh, zêndana mirovên xerab e, mirovên tiral û tembel bê bext û mifsid, mirovên ne bikêrhatî mirovên ko xizmeta dîn û dinya xwe ne kirine. Xwedê ji kerema xwe li dinyayê jî, riya cenet û cehenemê pêş me kiriye. Di dinyayê de ji bona miletek, xwediyê erdê xwe bûn, tê de serbest û aza rûniştin, îşê xwe, îşê welatê xwe bi destê xwe gerandin, mîna siha cenetê ye. Û dîsa ji bona miletek dîl û hêsîrketin, destê biyaniyan de, sefîl û şerpeze man, ne siha cehenemê lê rast bi rast mîna agirê dojehê ê dijwar, xerab, û cegersûz e. Ji xwe welê ne biwa, miletên mezin, miletên egîd û mêrxas, bi qesda parastina welatê xwe, azahî û serbestiya welatê xwe, li reşayiyê li ser rû û binê avê û bi hewa re şerê dijmina ne dikirin, xwe ne didan kuştin. Pêxemberê Xwedê bi xwe, cenabê Mihemed— silav û rehmeta Xwedê lê be— ji bona parastina dîn û diyanetê çend caran şer kiriye. Sebir û dia besî parastin û şkênandina neyaran biwa, pêxemberê Xwedê, destê xwe ne diavêt şûrê xwe û wî bi xwe singê xwe ne dida neyaran. Pêxemberê me ji wan mirovên xwedî sebir hezdikir ko ew deh bûn dijminên wan sed, û ev deh bi sebir û mêraniya xwe çavê dijminan dişkênandin û ew bi şûnda vedigerandin. Pêxemberê me şanî me kiriye miletek bi çi awayî dikare bigehe heq û mezinahiya xwe, û miletên cihanê ên egîd û ciwanmêr jî bereva nî û parastina heq çilo dibe, pêş me dikin.

Bixebite û dia bike ko Xwedê ji rehma xwe qesda te bibe serî, gava dibînî ko xebat zehmet e, sebir bike û bizane ko Xwedê ji mirovên ko di pêşiya îşên giran de sebir dikin, hez dike.

Îro dijminê me ê xedar û mezin nezanî ye, ji perîşaniya kurdan yê ko berpirsiyar e ez, im û tu î. Rastî eve, de bêje belê. Heke ez û tu, em qail bûn ko dijminê min û te ê mezintir nezanî ye û heke min û te me dest bi xebatê kir, emê zora vê nezaniyê bibin.

Ew hût û ejdehar ji min û te ne xurtir e, gir xuya dike hûr e, xurt xuya dike sist e, dijwar xuya dike, pepûk e. Ez û tu em dizanin ko miletê me miletekî hêja ye, ez û tu em dizanin ko miletê me, ne kêmî tu miletên dinyayê ye, ez û tu em dizanin ko peyayên ko ji nav miletê me rabûne, bi qasî mirovên dinyayê ên qedirgiran, bi qîmet in

Mirov divê ji welatê xwe hez bike, ev emrê Xwedê û pêxember e.

Mirov divê ji bona milet û welatê xwe bixebite, ev jî emrê Xwedê û pêxember e.

Divê em dest bi xebatê bikin, tiştên ko min û te heta îro kirine, başin lê ne bes in, bi rastî ne bes in, kêm û hindik in, xweş bizane gelek hindik in.

Gisinê xebatê min û te divê xetine hêj kurtir rakin.

Min û te, me baweriya xwe bi Xwedê û bi welatê xwe aniye, heke pêxemberê Xwedê bê xebat, bê şer û teşxele nikarî bû bigehe armanca xwe, em evd û xulamên di wî, bê xebat û xeyret, bêşik nikarin xwe ji perîşanî û sefîliyê xelas bikin

Heke dikarî zimanê xwe bixwînî û binivîsî, kurdekî peyda bike û wî hînî xwendin û nivîsandina zimanê xwe bikî. Mîna terkeserên dinyayê bibe derwêş, di nav gundan de bigere, dersa xelkê bibêje, xortên ingilîz û emerîkanî û rûsî di nav berf û baranê de ev çar sal in şer dikin, xortên frensiz ji erdê Frensê Vegirtî bazdidin, xwe digehînin Efrîqayê, dibin esker û diçin Italyayê şerê elemana dikin.

Polonî, Çek, Yewnan, Sirb Holendî, Belçîkî jî ev pênç sal in di meydana şerî de ne. Dinya şev e, şev tarî ye, ba liba dibe, berf û baran dadikeve badev rabûye, xortên cihanê dikevin balafirên xwe, di nav mij û dumanê de çar aliyên xwe xweş na bînin bi hezaran kilomêtiran difirin, tên agir dibarînin bajarên neyarên xwe.

Neyarê wan ne pepûk û tirsonek in, bi nêçîrvanan riya wan digirin, bi gulleyên topên xwe ên balafirşiken zor didine wan, wan diêşînin. Şevin hene 30—40 bombeavêş dikevin erdê, balafirvanên tê de tevî balafirên xwe têne şewitandin.

Şevek diçe, şeveke din tê, xortên hêja ji nû ve li balafirên xwe siwar dibin, û di tariya şevê de bi hewa dikevin, û berê xwe didin erdê dijminên xwe...

Bihayê azahî û serbestiyê xebat û xwîn e. Bê şik kurd jî mêr in, û kurd jî bi hezaran di ser riya welatê xwe de mirine!

Lê ez qalê halê xwe û yê te dikim,

## ENIYA BEHRA SPÎ

CEZAYIR — Qerargeha Hevalbenda a mezin li eniya Behra Spî dide zanîn: Eskerên brîtanî yên Ordiya pêncan di qada Anziyoyê de, bi serdestî êrîşî dijmina kirine. Di eniya Ordiya pêncan a bingebîn de, qiwetên emerîkanî di Kasînoyê de, bi xurtî zor dane elemana. Di derên din de tevdana kewte û sedmêran dom kirine. Refên me, di eniya Anziyo û Kasînoyê de, kom esker û girgirokên dijmina bi xurtî bombardiman kirine.

Bombeavêjên me ên sivik û nêçîrvanên me, di ser qada şerî re firiyane, karê xwe ê dîdevaniyê pêk anîne û tim û daim dijmin êşandine. 4 balafirên dijmina hatine xistin erdê, 2 mekîneyên me, venegeriyane warên xwe. Qiwetên me ên hewayî yên eniya Behra spî 800 caran bi hewa ketine.

## ORDIYA SOR LUGA STANDIYE

MOSKÛ— Siwarî û tangên rûsî piştî êrîşeke xurt Luga standiye, û dane pey eskerên elemana û gihane dera ko ji Pskovê, bitenê 30 mîl dûr e. Pêşmêrên Ordiya Sor rêhesina Luga—Pskovê vegirtiye.

STOKHOLM— Hawirên selahiyetdar bawer dikin ko mirovdewletekî fenlandî, Paaikivî, yê ko hatiye payetextê Sveçistanê, teklîfên Fenlandayê ên silhê qedimandine hikûmeta Sovyetistanê; her çend jî ew bi xwe hêj ne çûye nimînendekariya sovyetî a Stokholmê

LONDRE— Balafirên elemanî dirêjî axa Brîtanya Mezin kirine, 6 heben wan hatine avêtin erdê. Ji aliyê din nêçîrvanên brîtanî bi ser peravên Frensê re du mekîneyên elemanî anîne xwar.

Qerargeha Hevalbendan li eniya Behra Spî dide zanîn: Di eniya Ordiya pêncan de qiwetên emerîkanî êrîşî Kassînoyê dikin. Di serpira Anziyoyê de, leşkerên Hevalbenda çeper û penahên xwe qaim kirine. Bombeavêjên me ên navhincî dirêjî destgehşemendeferên Viterboyê kirine û li gazxaneyên Livurnê xistine. Di axa Çisternayê de refên me bi serfirazî komeskerên dijmina û zad û zexîre û çek û posatên di wan, dane ber agirê xwe.

Nêçîrvanên me ên bombeavêj di erdê piştçeperên dijmina de bi ser hêjagehên neyara ên eskerî de girtine û lêdane. Nêçîrvanên me bi ser qada şerê Anziyoyê re firiyane, karê xwe ê nobetdarî û dîdevaniyê pêk anîne û gelek ber-êrîşên dijmina bi serdestî paş ve zivirandine. Duhî 24 balafirên dijmina û du mekîneyên wan ên din hatine xistin erdê, 5 balafirên me venegeriyan e warên xwe. Li 4-ê şibatê, 4 mekîneyên dijmin ên din jî, hati bûn xistin erdê, lê danezana me qala wan ne kiri bû.

## ŞER BI LETONYAYÊ VE

MOSKÛ— Cengê axa Letonya û xelîca Fenlandyayê di nêzîkî Pskovê de, bi awakî zor û xwîndar destpê kiriye. Eleman bê etlahî qiwetine teze diqînin vê eniya şerî. Yekîneyên Ordiya Sor Korsum vegirtiye

## Xesarên Bomban

LONDRE— Meha borî bi êrîşên hewayî di Engiliztanê de, 107 peya hatine kuştin û 270 heb jî brîndar bûne.

NÛ— DELHÎ— Di rohelat û rovayê çiyayên Maguyê de, di nav bira qiwetên brîtanî û japonî şer dom dike.

## XORTEK



Ji taxa Kurdan a Şamê

MELBURN— Qiwetên Hevalbendan ên reşayiyê girava Rûke di pengava Vitiazê de, vegirtiye. Refên hevalbendan li zehf hêjagehan û nemaze di Rabaûlê de li sê balafirgehan xistine.

Xesarên ko gihane dijmina zehf giran in. Di tengava Sen Corcê de, derbên Hevalbandan li gemiyeke japonî ketine.

## CIWANEK



Ji xortên me yên Kurdistana Iraqê

LONDRE— Duhî êvarê Radyoa Romayê elam dida ko leşkerên emerîkanî bi nav erdê bakur rohelatê kasînoyê de gelek pêş ve çûne.

LONDRE— Duhî refek frensizî tevî refên bombeavêjên Boston dirêjî hêjagehên axa Germanistanê kirine.

LONDRE—Têtê gotin, ko nivîsevanê frensiz ê bi nav û deng, Tristan Bernard, di Nîsê de hatiye girtin

# DEMA NIHA

## BOMBARDIMANA BERLINÊ

LONDRE— Şêvadî Berlîn bi awakî heta niha çênebûyî, hatiye bombardiman kirin. Hezar balafirên brîtanî êrîşî hêjagehên payêtextê elemana kirine û 2.600 ton bombe berdane; êrîş 20 teqîqan ajotiye. Refên brîtanî, jê pê ve li bajarê elemanî Frankfurt li ser Oderê xistine. Piştî ko hezar balafirên brîtanî Berlîn dane ber bomban û jê bi dûr ketine, bombeavêjên Muskitos bi ser vî şaristanê de girtine û ji nû ve bombe avêtine. Xesarên çêbûyî gelek dijwar in, şewatên ko bi wan bombardimanan çêbûne hêj dom dikin. Danezana elemanî bi xwe muqir tê ko êrîşê çekê brîtanî têr tirs û dehşet bû.

### STARAYA RUSA KETIYE

MOSKÛ— Ordiya Sor Staraya—Rusa û Şmînsk vegertine. Der enişka Dnieprê neh firqeyên elemanî ko dora wan hati bûn girtin, bi destê eskerên sovyetî hatine safî kirin. Yekîneyên rûsî ji nû ve û bi awakî xurt êrîşî Krivoy—Rogê dikin.

## Serdestiya Qiwetên Hevalbendan

LONDRE— Ev 48 saet in qiwetên elemanî, bi qesda avêtina eskerên Hevalbendan behrê dirêjî serpira Anzioyê dikin. Hemî êrîşên elemanî hatine paş ve zivirandin.

LONDRE— Di nav çar mehên dawîn de li Polonyayê, elemana 6·000 welatperwerên polonî dane ber tifingan.

## M. KOLONEL BUASO



Esker û nivîsevanê hêja Kolonel Buaso yê ko li Bêrûtê, cihgirtiyê serekê şerdariya Ordiya Frensizî li Welatên Rohelatî bû, çûye Cezayirê ji bona karekî hêj bilindtir. Mirovên ko ew nas kirine, ji dil qedrê wî digirtin, ji ber ko ew zana, mêrxas, ciwanmêr, û bi her awayî hêja û guzîde bû. Benda Roja Nû a pêşîn, ya birê frensizî çîreyê qelema wî bû û wî di wê bendê de pesnê edebiyata kurdî dida û wesfê mezinahiya miletê kurd dikir. Kolonel Buaso tu cara ji bîra me naçe û daxwaza me xweşî û serfiraziya wî ye.

Strana Kurdî

# HA WER DELAL

Ha wer delal, ha wer delal..
Emîno kuro, min û li çema çemê Bişêrîyê:
Mi li Ferata, li Feratê Ehmedîyê, Kelekvana, kelek berdan dû gemiyê; Zewac xweş e li zozana li koçerîyê,
Mi xanimê mi cindiyê, mi Remziye xanim keça apê Emer Begê, qîza Mîrê Muhaciriyê;
Emîno kuro, tu şevkê were mala bavê mi mêvaniyê: Tu were tewafa cotê memikê mi zerîyê;
Ji te ra pir xweştir e, ji axatîya Remaniyê.
Mi Emînê Ehmed bavê Şukrî siwarê Sîqal axakê Rema dî bû li çawirma Mûşê, ser kursiyê,
Kolosê kiver xwar kir, kir mêvanê vê koffiyê:
Xwedê bi qedanda miradê mirad xwaza, bira biba miradê min û Emînê Ehmed, bavê Şukrî, siwarê Sîqal, axakê Rema;
Ezê bi bama darê nav çavê wê hewîyê:
Ha wer delal, ha wer delal, wer delalê;
Emîno, kuro min û li çema çemê Eynebetê.
Fermana min û Emînê Ehmed, bavê Şukrî, siwarê Sîqal axakê Rema rabû ji cem Kemal li cimhûretê;
Na welle rabû ji Diyarbekir ji ba qol-ordî ji wilayetê,
Emîno, kuro mêzeke, xelk û alem bûne tabûr li pê me tê;
Emîno, kuro were mi bi revî ne, bavî Amûda Mîra, binya xetê xwezî bi çaxa Xwedê bi wê saetê
Ha wer delal, wer delalî;
Êmîno, silav hatî ser silavê, mi ji Hillana zêwê kiri bû qutya dev ziravê,
Mi şand mesîla jorîn koşka navê, zemanê berê xweş zeman bû, bi emrê birê, bi qailya bavê, qeda were li şurûta vî zemanî;
Heta dilê dê ne, kevê qîzê nadê;
Ha wer delal, wer delalî,
Emîno, kuro, Cizîra Bota bi darkevot in, du xerat ketinê dar verot in,
Mi dî du Kevokan bi hev ra xwendin, du bilbila tevde gotin, xwezî bi rehma Xwedê, bi wê wextê bira mi bidiya serê min û Emînê Ehmed bavê şukrî siwarê Sîqal, axakê Rema, her du li ser ba'lîfê bûne cot in.
Ha wer delal, wer delalî.
Emîno kuro textê seyida ser ber jêr e, Hillana zêwê bi ser da mil e
Koşka navê, hebkî li hêl e, mi dî Emînê Ehmed bavê Şukrî siwar bû, li hespê nêr e;
Berê xwe da Amûda Mîra ser ber jêr e.
Emîno, kuro, mi go belkî tu pir ciwamêr î, mi nizanî bû tu ji wesyeta, wesîla jina xwe ne wêrî.
Bi anê welle, ez Teyfo nakim, tu derda li canê xwe pê da na kim.
Ezê Bişêrîya jorîn bi deman kim, ava gola Sînanê li ortê kar kim,
Xwedê qadir kî, pir mezin e, belkî em sed û yek zêrî lîra tê da kar kin;
Ezê herim çawurma Mûşê, kurk û ebakê ji Emînê Ehmed ra bazar kim;
Pê şal û şapikê wî qeytan kim, belkî xercîyek ji ber bimîne, pê simêlê wî hina kim;
Ezê serê Teyfokê muhacir bi qurban kim;
Ha wer delal, wer delalî;
Emîno, kuro, ez li zîn î, tu li zîn î, xwezî bibama nanekî ji nanê şekir hûr şulhînî, tê ketama li ser dev û Emînê Ehmed, bavê Şukrî, siwarê Sîqal, axakê Rema, ji bo xatirê dûkê qalûnê li xwerînî.

EBDILHADÎ MIHEMED

# IBADETGEHEK



Ji bergehên welatê Frensê ên spehî û çeleng: Miletên dinyayê hemî muhtacî dîn û diyanetê ne. Dîn, heq, exlaq, rastî, qencî, xebat û paqijiya dil û wicdanê ye. Dîn û bawerî miletên dinyayê ji tarîtiya nezanînê xelas dikin û wan digehîne roniya Xwedê.

Heçî ji Xwedê hez dikin, ji zanînê, ji pêşveçûnê hez dikin. Bitenê ilm û zanîn mirovan digihîne nîzingî Xwedê. Heke dil û çavê me bi zanînê qenc venebûne, em nikarin bi rastî mezinahiya Xwedê nas bikin.

2ème ANNEE LUNDI 21 FEVRIER 1944 NUMERO 29

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél. 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 10 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 10 L.L.S. Etranger 2 L. Stg.

## Vers la Victoire

### CHRONIQUE HEBDOMADAIRE DE LA GUERRE

Volant de victoire en victoire, l'Armée Rouge frappe alternativement au Nord et au Sud et sème la panique dans le Haut Commandement de la Wehrmacht et dans l'esprit de Hitler. Le « Grand Caporal » ne parle plus d'une victoire allemande. Ce rêve a vécu. Maintenant, les Nazis ne pensent qu'à une seule chose : retarder leur disparition. Mais personne ne pourra arrêter les Soviétiques dans leur marche victorieuse sur Berlin.

Suivant les instructions du Maréchal Staline, les vaillantes troupes des Ier et IIème. fronts ukrainiens avaient encerclé 10 divisions allemandes à l'Ouest de Tcherkassy, le 3 Février dernier. Les violents combats pour l'anéantissement de ces divisions ont pris fin maintenant. Von Mannstein a mis en ligne toutes ses réserves disponibles, pour secourir les troupes encerclées, mais il n'a pu qu'agraver le désastre. Cette bataille a couté à Hitler la perte définitive de près de 100,000 soldats et d'un matériel pouvant équiper un Corps d'Armée entier.

C'est la plus grande catastrophe subie par la Wehrmacht depuis Stalingrad. Depuis cette bataille mémorable, la Wehrmacht n'a pas cessé de reculer. Mais dans sa propagande, Goebbels soulignait inlassablement que par cette tactique « de défense élastique », les troupes allemandes abandonnaient du terrain à seule fin de raccourcir leurs lignes et sans subir de pertes.

Or, en définitive, cette « élasticité » allemande a abouti à la disparition d'une grande armée allemande, alors que la ligne du front s'est allongée de plusieurs centaines de kilomètres depuis un an.

Les victoires remportées par l'Armée Rouge tout au long du Front Oriental sèment la terreur dans les pays satellites de l'Axe. Hongrie, Roumanie et Bulgarie d'une part, et la Finlande de l'autre vivent des jours sombres.

Le Gouvernement Hongrois veut persuader au monde qu'il n'est pas solidaire de l'Allemagne et que celle-ci poursuit une politique indépendante. On se rappelle que le Gouvernement de Budapest avait commencé par démentir la présence de troupes hongroises sur le Front Oriental et que Moscou avait rétabli la vérité en citant les unités qui s'y trouvent toujours. Maintenant, l'Etat-Major Hongrois a fait des démarches répétées auprès du Grand Quartier Général Allemand pour obtenir le rapatriement immédiat des divisions hongroises. Hitler y a opposé une brutale fin de non-recevoir.

Quant aux Roumains, si courageux hier, mais devenus maintenant singulièrement poltrons, ils fuient la Bessarabie et la Moldavie. Pris de terreur, le Gouvernement de Bucarest prend des mesures en prévision d'une invasion soviétique.

C'est en Bulgarie que la crise est la plus aigue. Le gouvernement pro-allemand est aux prises avec l'écrasante majorité du peuple, dont les sentiments panslaves s'intensifient par suite de l'avance russe. Constamment, des bagarres se produisent entre patriotes et policiers. Pour maintenir son autorité chancelante, le gouvernement de Sofia vient de créer une police spéciale sur le modèle de la Gestapo et de proclamer le couvre feu sur toute l'étendue du pays.

La Finlande, elle, semble se rendre compte pour la première fois de sa situation réelle. Ce changement d'attitude est survenu à la suite de l'offensive victorieuse déclenchée dans le secteur de Léningrad. Du jour au lendemain, le territoire de la Finlande se vit exposé aux attaques de l'Armée de terre et de l'Aviation Soviétique. Quelques raids massifs sur Helsinki et un avertissement américain ont fait le reste : le peuple finlandais s'agite et demande une paix séparée.

Depuis plusieurs jours, des négociateurs finlandais se trouvent dans la capitale suédoise pour établir le contact avec les Soviets, et pour connaitre les conditions qu'ils poseront. Ces conditions n'ont pas encore été révélées. Il est clair, toutefois que Moscou exigera la disparition des hommes d'Etat d'Helsinki qui ont entrainé le pays dans la guerre contre l'URSS. Cette demande semble être considérée sérieusement par Helsinki, puisque le Premier Ministre finlandais aurait démissionné.

K. B.

## KURDISTAN

### A PROPOS D'UN ARTICLE

Dans notre dernier numéro, nous avons publié la traduction intégrale d'un article sur le Kurdistan qui vient de paraître dans la revue égyptienne « Akhbar el Harb ». Il appartient à notre journal de préciser la portée de cet article.

Nous ne songeons pas à aborder ici le vaste domaine de l'histoire, de la culture, de la vie économique des huit ou neuf millions de Kurdes qui, comme le précise l' « Akhbar el Harb » — habitent un triangle montagneux situé dans les territoires turc, iraquien et iranien. Ce que nous voulons, c'est rappeler les circonstances à la faveur desquelles les Kurdes de Syrie, d'Iraq et d'U.R.S.S. ont pu développer leur culture propre et exprimer leurs sentiments nationaux, malgré le morcellement politique auquel l' « Akhbar el Harb » fait allusion. Le rappeler c'est, on le verra, payer une dette de reconnaissance à la France, à la Grande Bretagne, à l'URSS.

La victoire alliée de 1918 constituait le triomphe des principes dont l'application a rendu la liberté aux Tchèques, aux Polonais, aux Arabes. Dans le domaine théorique, ces principes ont fait admettre les revendications kurdes tendant à l'unité et à la souveraineté nationale ; dans le domaine pratique, l'application du traité international qui sanctionnait ces revendications, à du céder aux jeux de facteurs imprévus. Toutefois, l'esprit même de ces principes a survécu aux vicissitudes des contingences politiques.

La Société des Nations — qui garantissait, dans tous les pays sous son contrôle, les droits des minorités ethniques —confiait les mandats syrien et iraquien à la France et à la Grande-Bretagne. Ces deux puissances ont fait honneur à leurs obligations vis-à-vis des minorités.

En U.R.S.S., les Kurdes ont bénéficié de l'encouragement que les autorités accordent au développement culturel national de chacun des peuples de l'Union Soviétique, bien que le nombre de Kurdes en territoire soviétique ne dépasse pas 160.000. Après la première guerre mondiale, tous les peuples du Moyen-Orient jouissaient d'une liberté et d'une prospérité qu'ils avaient ignorées depuis des siècles. C'est ainsi que, dans le Kurdistan d'Irak, dans le Nord de la Syrie et en pays soviétique, un million et demi de Kurdes ont connu une magnifique renaissance nationale.

Sous la protection des autorités soviétiques, françaises et anglaises, les qualités si solides des Kurdes se sont épanouies. Tandis que le labeur paisible du paysan et de l'ouvrier kurdes répandait la prospérité matérielle et que des écoles kurdes s'ouvraient un peu partout une nouvelle littérature populaire se développait.

Avant 1919, la langue littéraire kurde — très différente de la langue parlée, comme c'est le cas pour le grec classique ou pour l'arabe coranique — était mal comprise de la grande masse. Pour écrire, on se servait de l'alphabet arabe. En 1919, les bases d'un alphabet kurde à caractères latins étaient jetées, sur le conseil d'éminents orientalistes européens. Cet alphabet, bien adapté au caractère indo-européen de la langue kurde, joint à l'usage du langage populaire, a permis l'éclosion d'une vaste littérature populaire. Des centaines de livres en langue kurde, de nombreuses publications, dont dix périodiques, répandent, parmi les Kurdes de toutes les classes, l'esprit vivant de leur culture nationale.

Quand, après cette guerre, les Nations-Unies règleront les destinées des peuples, il sera intéressant de voir de quelle manière les principes de la Charte de l'Atlantique, et ceux qui s'expriment dans les déclarations du gouvernement soviétique, influenceront le sort du Kurdistan.

*ALGER. — Les dernières dépêches parvenues du front d'Italie annoncent que les contre-attaques alliées dans le secteur de Carroceto font des progrès*

## WILLIAM SHAKESPEARE

*C'est sous le règne de la Reine Elisabeth que vécut le plus grand poète anglais, celui qui connut la misère des pauvres et l'amitié des grands, et qui sut voir, du regard pénétrant et clair du génie, la part d'humanité et la part de rêve que chacun porte en lui-même.*

*Dans cette période de guerre intérieure et extérieure, le pays prit un développement sans précédent, et vivant à Londres, Shakespeare connut sans doute les capitaines des frégates chargées d'étranges trésors, les soldats de fortune, les gentilshommes campagnards, les doux mendiants et les criminels endurcis que produit une époque d'aussi profonds changements.*

*Mais où a-t-il pu connaître ces êtres légers, fantasques et charmants qui donnent tant de grâce à sa Tempête, à son Songe d'une Nuit d'Eté, à son Conte d'Hiver ? Comment a-t-il conçu cette Titania capricieuse et fière, ce Puck malicieux, ce Caliban lourdaud, et toute la farandole de ces créations de songe, fées, esprits, sorcières, qui nous font rire et pleurer quand nous les voyons pour la première fois, et que nous n'oublierons jamais plus,*

*Car ce que Shakespeare a d'unique dans la littérature du monde, c'est qu'il enrichit notre vie de toute une série d'amis, aussi réels que ceux qui nous coudoyent dans notre travail et dans nos plaisirs. Qui de nous n'a pensé à la tendre Ophelie ou au fougueux Romeo comme à quelqu'un qu'il aurait connu dans quelque mystérieuse existence antérieure ? Qui de nous n'a frémi devant l'horreur du Roi Lear ? Qui de nous n'a tremblé devant l'angoisse d'Hamlet ?*

*Comme la vie, les drames de Shakespeare sont entremêlés de traits burlesques et sombres : les valets ironiques et les fous trop sages interviennent dans les plus sanglantes tragédies, comme pour nous faire comprendre que ce qui peut arriver de plus terrible à un être ne concerne que lui seul, isolé qu'il est dans sa vie fragile et unique. Et ce que sa période eut de sordide et de magnifique, Shakespeare en a fait comme un tableau rehaussé d'or et de pourpre, sur un fond de sombre mélancolie, de l'angoisse et du triomphe de la condition humaine.*

*Chacun connait ses drames ; on connait moins ses poésies, qui sont pourtant l'une des merveilles de la littérature, surtout ces étranges Sonnets qui racontent la mystérieuse histoire de deux hommes et d'une femme, et dont tant de critiques ont cherché à percer l'énigme, comme si une telle solution pouvait ajouter à tant de perfection, à tant de désespoir.*

*Car dans ces poèmes comme dans tout ce qu'il écrit, Shakespeare a mis comme une goutte d'éternel, et les mots d'amour qu'il murmure tout doucement un soir d'ivresse, résonnent à nos oreilles avec le bruissement du vent qui plie les arbres de notre jardin ; comme lui, ils sont les mêmes chaque printemps, et tout autres pourtant avec chaque jour qui passe.*

L. V.

## LA PRESSE KURDE

*Nous signalons, à nos lecteurs s'intéressant au mouvement culturel KURDE, les journaux et périodiques kurdes suivants:*

**RIYA TAZÉ.** organe des Kurdes de l'U.R.S.S paraissant à Erivan.

**GALAWÉJ.** la plus grande revue littéraire kurde, parait chaque mois à Bagdad, avec 80 à 100 pages de texte

**JIYAN** hebdomadaire politique et littéraire paraissant à Souleimanié.

**HAWAR** revue littéraire bi-mensuelle paraissant à Damas Textes kurdes et français.

**RONAHI** Revue mensuelle illustrée, paraissant à Damas.

Çîroka Kurdî

# MUHRA SULEYMAN

JI ERMEXANÎ RE ERMEXAN

Şairê meyî mezin «Cezîrî» çiqas rast û çiqas xweş gotiye:

«Kesê xurbet nedî, mihnet ne xwarî cur'eya firqê,»

«Çi zanit, bêxeber jana, dilê dax û keser tê da?»

«Brûska hatinî da dil, felek ez pir hilavêt îm,»

«Nizanim, hêj kuda bavêj, divê dewran û çerxê da?»

Ah, seydayê min! xwezî ew qudreta te ya şi'rê bi min re heba û min îro pêt û guriya agirê dilê xwe teswîr, bikira, xwezî...

Çiqas tiştekî bê mane ye, ku hezar çiya û şorezarî derbasbi kim, ji hezar deşt û nevalî bi bihurim, û paşê bêm li cihekî mîna vî cihî rûnim; têde gula xortaniyê bi çilmisînim mûma ciwaniyê vemirînim, û şîreya mejîyê xwe, bi zarokên «Zêd û Umer» an, bidim vexwarin!

Di «Rojên derbasbûyî» de, min, sebeb û hikmeta vê sirê nivîsî ye. îro naxwazim dîsa lê vegerim ..

o o o

Îro, piştî dahnê nîvro gava min zarokê dibistana xwe belav kirin, min xwest, hebekî derkevim dora gund, bîna xwe ya tengijî bistînim. Hêdî, hêdî bi rêve diçûm, û min li dora xwe dinêrî. Li kuderê min çavendayî (menzere) yek çak di dît, li wê vardiqilîm, û min bi ah û keser lê dinêrî. Welatê min î kesk dihate bîra min.., ew çiyayên reng—zirêç li ber çavê min derbas dibûn. Bê vîn, bi rêve diçûm... nizanim çawa bû, ji nişka ve, lingê min bi tiştekî ve aliqî. Gava min bala xwe dayê, veciniqîm... û bi şûnde vekişiyam. Ev tişt, di şeklê kuvarkekê de bû. Lê ne kevir, ne hesin, ne dar û, ne jî giya bû.

Bi rengê xwe jî, ne mîna tu rengê ku em dizanin. Cismekî xerîb, bi rengekî ecêb bû-

Belê, gava min bala xwe dayê ez veciniqîm. Çima ku her car em dibihîzin, yan jî di rojnameyan de, dixwînin ku li filan cî, yan li filan derê, merivekî tiştek li erdê dîtiye, paşê di destê wî de teqiya ye, û ew kuştiye, yan jî birînkiriye.

Ez çi bizanim, di cenga îro de, erd û ezman û derya giş hatine lexemkirin. Bi vê tirsê, gava min ew tişt dît, min got qey bomba, yan lexemek e. Her carekê min lê dinêrî, min gavek bi şûnde davêt. Di wê gavê de, min fam kir, ku can çiqas şêrîn e. Lê paşê, ez qederekî damam. Ew canê ku li «Cidêda Ertûz», bê fêde û bê sebeb diriz e, çi xêra, wî heye? Min ji xwe re go hema çidibe, bira bibe, min destê xwe direjî wî tiştî kir; min ew ji erdê rakir û di nav destê xwe de peland. Hingî, ji mûyê serê min hetanî serê neynûkê lingê min de şîp «cereyan» ên kehrebî çûn û hatin... dinya li ber çavê min bû mij û xumam... paşê hêdî hêdî ew mij wenda bû, li şûna wê, du dêwên reş, şûr bi dest, xuya bûn, û ji min pirsîn:

—Em dinê xan bikin, xerabe bikin?

Di nav çîrokan de, min efsaneyên wisan bihîsti bûn; lê rojek ji rojan, ne dihate bîra min, ku efsaneyek wisan bê serê min bi xwe, û bi rastiyeke bê gûman, li ber çavê min xuya bike... Bi rastî jî ber vê rast—hatina ecêb ez rast û çep teyisîm... Paşê min xwe girt. Berî ku caba dêwan bidim min ji wan pirs kir:

— Ev çiye, di destê min de ye?

Gotin: Muhra Suleyman e, Em dinê xan bikin, xerab bikin ?»

— Na ! ... Ez, ji we hêvî dikim, nuha bira dunya mîna xwe bimîne, kanî cenabê Suleyman li kuye?

Her yekî ji wan, bi destek min girtin, û gotin: Çavê xwe bigre... Hetanî min, çavê xwe girt û vekir, min xwe di hizûra Suleyman pêxember, padîşahê îns û cinan de, dît. Li ser textekî zêrîn rûnişti bû... li hemberê wî « Belqîz » jipiya bûn, di destê wê de piyanek kewser hebû... pêşkêşî piresteşkarê xwe dikir, Wî jî, di lop—dilop bi ser xwe, da dikir. Paşê li min zîvirî û got: —Ev bûn du hezar sal, cinekî bi navê «Seydoş», ev muhra min ji min dizî bû. Vaye, îro te ji min re anî; Te çi divê, ji min bi xwaze...

Min dizanî bû, Suleyman pêxember padîşahê teba (heywan) ne, di dinê de, zman û zaravê teban, ji min re bûbû meraq. Min jê re go: Hêvîya min ji cenabê te, mifta baxçê teban û tilisma zar û zmanê wan e...

Cenabê pêxember, ev tişt min dirix ne kir; ji cinekî re ferman kir, ji min re daxwaza min anî... Ez çûm nav baxçeyê teban.,. Ji her çeşîdî teba ref-ref difiriyan... kerî—kerî digeriyan. Ez bi gelekê wan re peyivîm; Ji hinekan dilxweş ji hinekan jî dilreş veqetiyam. Dilê min bi hinekan şewitî mîna berx, ga û kîvroşkan... Li hinekan jî hatim xezebê wek mar, tûpişk, gurê dev-bi xwîn û kaselîsê wan (çeqel û rovî).

Cenabê pêxember, wê rojê destûra min ne da. Çima ku roja dûtir muhakema kund û goyin (pepûk) hebû... ji min re go: divê tu, vê muhakemê jî bibînî. Ez jî mam.

Wexta muhakemê hat kund û pepûk li ser kursiya îtîhamê û li kêleka hev rûniştin. Suleyman pêxember ji kund re go: Teba giş, ji te gilî û û gazina dikin; Dibêjin: «Ev tebakî şûm û bêxêr e... li ser kê dixwîne, mala wan kambax dike» tu çi dibêje? Kondê sermezin û çav-zer (ku jê xuya dikir, perekî ji zadeganiya xwe feda nake) bi giranî rabû ser xwe û go: Şahê min, tu guh didî kurm û kêzikê zeviyan... Ji bav û kalan de ew nêçîra me ne... gêrik û mûrî jî koleyên me... ne hedê wan ku li min gilî bikin û bi min re muhakeme bibin.

Wekîlê gêrik û mûriyan «murxê goyin» rabû ser xwe; Çêlikê xwe — ew çêlekên ku kund ew di hêlîna wan de xwaribûn — anî bîra xwe, çend dilopên xwînê ji nukilê wî herikîn, û ji dil keserek kişand û got:

— Çavê xwe veke, efendî! em tovê babliska bîstan e... îro bendeganî û zadeganî ne maye... her kes serbest û azad e. vê fikra tewş ji serê xwe bavêje, bira çavê te roniya rojê bibîne... ez îro, dawa xwîna wan çêlikên bê guneh ji te dikim...» Gufte—goyek dûr û dirêj, di nav her du mêrxan de çêbû. Ez bi meraq, li bende hukmê cenabê hakim bûm... lê muxabin! girîyê kurê min î şeşmehî «mizgîn», ez ji xew hişyar kirim.

Hingî, ji ser dîwarê xerabekî, dengê kundekî di hat... di newaleke kûr û dûr de jî, pepûkek hezîn, hezîn di naliya... Cidê de: 27 — 10 — 943

QEDRÎ - CAN

# Civanên Dîroka Cihanê

Serekên Hevalbendan ên Mezin, di Qahire, Moskû, û Tehranê de civanine mezin danî bûn û lê de şêwir û mişawirên giran çêbûbûn.

Wêneyên jêrîn çend bergehên wan civanan pêş me dikin.



Civanê Qahirê: Serekwezir Çorçil, Serekcimhûr Rûzwelt, û Serekcimhûrê Çînê Marêşal Çang Key Çek



Civanê Tehranê : Mareşal Stalîn, wezîrê Brîtanê ê yekemîn Mr. Çorçil û Serekcimhûrê Emerîkayê Mr. Rûzwelt



Ji Bergehên Sovyetistanê, keç û dotên Sovyetistanê di dibistanan de hînî zanînine hêja dibin û bi her awayî bi kêrî milet û welatê xwe tên.

LONDRE — Nûçeyên dawîn yên Kasînoyê elam didin ko elemana bi çavsorî şer dikin lê bê feyde. Ji her alî qiwetên Hevalbendan zor didine wan û dema perîşaniya wan bin bi hin nîzingtir dibe.

Sal 2 — Hejmar 40.

Duşemb 6 Adar 1944

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 15 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 15 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

KOVAR Û ROJNAME

## STÊR

Ûsê Hersan, hevalê me ê ku vê paşîyê hew hînê xwendina Kurmancî bûye wek zarokekê ku lîstokekê bi bûne, rojnameke nû da dest min û bi gewz got: Va ye Stêr !

Rojname, di dest min de û bihnekê damam, panzdeh sal berê bi cih û war hat bîra min..;

Xûkirin ji dilî, bindestî, silî, kêmanî, hezkirin û prestîşî ji azayî, serdestî, mêranî, tolbazî himên avaya nejadê kurd in...

Ev şerdeya bilind û hamandîde, li wê xûna wan a ji her gemarê parastî û paqij ra gihaştî bû dil û canê min, mejiyê min jî pê hati bû avdan.

Wê xûna germ û jehredar ji ne çarî pê çax avêti bûm hora parastinê, parastina gel û welêt, bê yar û heval, bê çek û ber û dest vala.

Min bi van dest û zendên xwe ên jar, xwe da bû ber azakirina Kurd û Kurdistanê, xwe da bû avakirina kavilê me ê wêran wek her kurdî bi hêvî û baweryak bêlerzîn... heşê min li vekirina rêkê, çavê min li çirûska ronîyakê digeryan.

Hilma min çikyayî, dilê min teng bû.

Di vê diltengyê de, xwediyê Stêrê mîna rojê li min hilatî bû tîrêjên wî ên tîndar giyanê min zende, dilê min xurt, xûna min germ kiri bû, nola agirekî da bûm teqandin. Agirekî xurtîya wî karî bû neyar bilerizanda xurî û pêtên wî ew di yek pifê de bisotana...

Erê wê çaxê di dibistana biyaniyan de bûm, navê Kurd û Kurdistanê yekcar ji me veşirtî bû, kesî ne karî bû, banîna ser zimanê xwe.

Zarokên wek min kurd bûn, wan jî her kê di şîverekê ra xwe digihandin neyaran û xwe dikirin ji wan, bi çavkî kêmtirî li kurda dinêrîn, ji xwe çavsorî û bê rêtiya neyaran û dijminahîya wan a bê behane bi kurmanca ra hundurê min ji wan berşojî bûbû, di serê min de hêlîna ramanek bilind, di dilê min de hîmê armancek rast hati bû danîn.

Armancek felatkar ! Ez bûbûm Welatparêz, welatparêzkî agirêj û dijwar, wek oldarekî min bi dest eşkere kirin û ajotina doza xwe di nav hevalên xwe ên kurmanc de kir.

Hevalê min li ser vê pirsa ne bihîstî û bi gêdûk daman.

Gazind ji wan ne dibû, dijmin wusa bi mejî yên me lîsti bûn ku me bi xwe bawerdikir kurd tu ne ne, Kurmancî ne zimanê xwendin û nivîsandinê ye. Vajî wan, ji tu deva, heya ji dê û bavê xwe jî, me tu tiştî ne bihîstî bû û ne dibihîst.

Gêdûka wê, dijmina ji me bi bihîsta tavilê bê eman em bikuştana.

Azaya Kurd û Kurdistanê û gerandin bi destê kurda bi tiştekî ne bûyî bû û ji xwe bi tu mejî ya ve jî ne dizeliqî. Lê carkê ketibû serê min di mejîyê min de diliviya û ez dajotim.

Bi hêvîya ku ji xwe re kanyakê bibînim, nivîsarên dirokî û civakî yek bi yek min li hev dixistin, tu ronyê xuya ne dikir, te digot qey ev Kurd û Kurdistan îro nuh hatiye rastê û ji min pêve haya kesî jê tu ne. Bes navê kurd bi tenê min bi dîta ajotina hevala hêsan dibû.

Di wê gêjê de Mîr Kamiran mîna brûskê di gazya min hat, di buhurekî bê qam ra derbas kirim. Di kovareke kevn û avêtî de min nivîsarek wî bi navê (Li kurda hûr bûna dîrokî û civakî), dît, ji kêfa min ra,. ji xurtiya dilê min ra pîvan û sînor ne ma bûn-xewna min rastiyek bilind, ramanek bê buha bû... pêşdarê min di nav hevala de kiri bûm sergelî û rê nas. Gelo ew neyarên ku li mirina me kurda dilezandin û bi vê guftê derew li xwe û li me dikirin, îro li pêş vê havila me a mezin û ne mir nemaze ev her çar rojnamên kurmancî ku xwediyê wan çend rêzên ku bi destê wan hati bû veşartin derdixe çi dibêjin? Bersiwa wan vaye ez didim: Bila zanibin em na mirin, em ne ê mirinê ne, êdî ji dava fen û xapên wan derketine. Ber bi azayî û jînê ve bi gavên direj bi lez nêzîk dibin

REŞÎD KURD

# Bi Hezaran Ton Bombe

LONDRE—Refên emerîkanî biro dirêjî axa Germanistanê kirine û li bajarê Brunswîkê û li zehf balafirgehên erdê elemana ên mezin xistine, nêçîrvan û 2.000 bombeavêj têkili wan êrîşan bûne, û 6.000 ton bombe avêtine hêjagehên elemanî. Balafirgehên almanî yên Bramşe Lingen, Vexte, Kuakenbruk, Diofolz û Alkorn derbine giran xwarine 33 mekîneyên elemanî hatine avêtin erdê; 15 bombeavêj û 3 nêçîrvanên Hevalbendan venegeriyane warên xwe.

Nû-york— Di nav 36 saetên dawîn de 6.000 balafirên Hevalbenda 7.000 ton bombe avêtine hêjagehên axa Germanistanê û yên axa vegirtî

Şeva yekşembê 1.000 balafirên brîtanî 2.600 ton bombe avêtine Leyipzigê- Rojên şembî, yekşemb û duşembê, 4.000 balafirên emrikanî 2.000 ton bombe berdane Stutgartê û hêjagehên axa elemana ên din: Şevadî 1.000 balafirên brîtanî 2.400 ton bombe dîsa berdane Stutgartê.

## DERBÊN ORDIYA SOR

MOSKÛ—Di şerê eniya Volkov û Leningradê de, yê ko ev mehek e dom dike leşkerên rûsî 90.000 elemanî safî kirine, 7.200 hêsîr girtine, 97 balafir, 275 tang, 1.962 top, û 28 firqeyên elemanî ji hev de xistine,

MOSKÛ— general Koniev bi paya mareşaliyê, hatiye ser bilind kirin. Di Ordiya Sor de niho 12 mareşal hene.

LONDRE—. Îro serêsibehê di Londrê de işareta talukê hatiye dayîn, lê hindik dom kiriye.

QAHIRE — Di Ordiya yewnanî a azakirina welêt de 2.500 serbend û zabit hene.

ZÛRÎX— Rojnama Svîçreyî Noye Zurîxer Çeytung dinivîse: Ordiya Sor, her çend ji dinya zivistan, hewa ne xweş û erd têrherî ye, hero asêgeheke elemanî zeft dike. Serfiraziya leşkerên rûsî di eniya Leningradê de, zefereke gelek hêja bû. Divê mirov ji bîra me ke; her cara ko elemana bawerdikirin Ûris westiyan e, Ordiya Sor bi êrîşeke nû, eleman perîşan kirine.

Di axa Italyayê de, hevalbendan xisarine giran gihandine û digihînin elemana, û dema êrîşa Ewripayê — eniya diwemîn — hin bi hin nîzingtir dibe. Di Pesifîkê de jî qiwetên Hevalbendan û yên emerîkanî li zehf deran zora Japona birine û gelek giravên hêja standine.

## EMIRNAMA STALIN

MOSKÛ— Bi hênceta sersala Ordiya Sor a 26'an Stalîn emirnama xwe a rojîn de gotiye: Êdî dinya dizane ko eleman ber bi perîşaniyê ve diçin. Emê serê nazîsmê bi perçiqînin, û eleman vî tiştî dizanin û niho xelasiya xwe di nifaq û fesadiyê de dibînin, fesadiya ko dikin bêxin nav dewletên Hevalbendan.

Lê destbratiya Hevalbendan xurt e, û tifaqa Hevalbendan ji pirsên ko bi jiyîn û heyîna wan girêdayî ye, derketiye.

Heta niha elemana gava bitenê eniyekê de şer dikirin, dijminên xwe dişkênandin lê îcar Ordiya Sor vî tiştî ber meqlûb kiriye û eleman şkênandine û sibe ko carekî hevalbendên me jî direjî elemana kirin, ew yekcar perîşan bibin.

MELBURN— Di Nû—Gineyê de qiwetên emerîkanî 34 gemiyên japonî bin av kirine.

LONDRE — Safîkirina pênc firqeyên elemanî ên ko di axa Nikopolê de dora wan hati bû girtin, bi hatina qiwetên rûsî ên teze ber bi xelaseka xwe ve diçe.

MOSKÛ— Eleman lez û bez ber bi Xersonê ve xwe bi şûnda dikişînin. Eleman dev ji çek û posatan ber dane û dikin xwe bi lez ji lepê Ûrisa xelas bikin, yên ko li pey wan in.

## MINAREYEK



Tiliya ko yekîtî û mezinahiya Xwedê şanî me dide.

Ezan bi erebî ye: di erdê me de hin radibin, bi zimanê xwe ko miletê me seh nake, ezanê dixwînin. Guhê me ji ezana erebî hez dike, heke ezan bi zimanekî din divê bête xwendin, divê bi kurdî bête xwendin, û bête gotin: Xwedê mezintir e, ê mezintir Xwedê ye, rabin nimêjê !...

## Sersala Ordiya Sor

Bi hênceta Sersala Ordiya Sor a 26-an hemî serekdewletên Hevalbendan pêrûznameyine hêja şiyandine Mareşal Stalîn û pê qedrê mêrxusî û egîdiya leşkerên Sovyetistanê û serfermandarê Ordiya Sor Mareşal Stalîn girtine.

CEZAYIR— Radyoa Frensê dide zanîn ko duhî serê sibehê tangên Hevalbendan di eniya Anzioyê de, êrîşî elemana kirine, ew şkênandine û ketine çeper û penahên di wan.

LONDRE— Duhî gava refên emerîkanî, êrîşî axa Germanistanê kirine, bombeavêjên emerîkanî û nêçîrvanên Hevalbendan ko ew ref dihemandin 126 balafirên elemanî xistine erdê.

# DEMA NIHA

MOSKÛ— Yekîneyên Ordiya Sor gihane pêşiya Pskovê; Pogorelka hatiye standin, ev şaristan ji Pskovê 10 kilomêtir dûr e, û dikeve bakurê wî.

LONDRE — Refên emerîkanî ên mezin, ji bombeavêjên Kelehên Firok bihevketî dirêjî axa Germanistanê kirine û li Brunswikê xistine.

LONDRE – General Dîlmar şevêçûyî gotiye: eniya diwemîn û şerê vegirtina erdê Ewripayê, ber bi destpêkirinê ye. Qiwetine behr û hewazî û reşayiyê ên mezin xwe pêkanîne.

CEZAYIR— Di eniya talyanî de, eskerên brîtanî ji nû ve bilindahiyek standine, refên hevalbendan balafirgehên Gîdonya, Lîtoriyo û Marçîliyeyê bombardiman kirine.

LONDRE — Hefta borî çekê Hevalbenbanê hewayî 18.000 ton bombe avêtine hêjagehên elemana, û 777 nêçîrvanên elemanî xistine erdê, ji Hevalbendan 464 mekîne venegeriyane warên xwe.

NÛ DELHÎ — Ev 24 saet in eskerên Hevalbendan erdê Mayuyê ji dijmina paqij dikin; qiwetên Japonî ên mayîn, piştî ko bi risê dane erdê xwe bi şûnda dikişînin, Japon dikevin erdê ku jê dest bi êrîşan kiri bûn.

LONDRE— Kelehên Firok, di penaha nêçîrvanan de dirêjî axa Frensê kirine û li hêjagehan xistine, refên emerîkanî rastî nêçîrvanên dijmina ne hatine, lê topên ber balafira gelek şixuline.

# SEVOKA HECI

— 3 —

Wê gavê Mîrekê Palû rabû, çû melakî donzdeilim anî, ew melayê donzdeilim, pêlê kitêbê li hevdu qulibandin go:

Ya Mîrekê Palo, bi Xwedê tu destûra lawê xwe didî bide, heger tu nadî, wê lawê te, har û dîn bibe, wê li çolê keve, ismê aqil di serê Mîr MehMûd ne maye, derdê dilalê ketiye !

Tew lo dilo, tim lo dilo! ...
Dil bi kulo dilo, hêsîro dilo,
tîra xeybaniyê lê keto dilo...

Bavê Mîr Mehmûdê Cindî, rabû, ser piyê, ciwaniyek ji Mîr Mehmûdê Cindî re ji tewlê bi der aniyê, teng û bertengê vî ciwanî şidandiyê, xurcikek zêra ji Mîr Mehmûd re dagirtiyê...

Tew lo dilo, tim lo dilo, hêsîro dilo, dil bi kulo dilo....

Mîr Mehmûdê Cindî rabû piyê mînakî dihnekî ji dihnên Xwedê, ciwanî bi destê xwe girtiyê, bi ser piştа wî ciwanî ketiyê, ji bajarê Mîrekê Palo bi der ketiyê...

Hey heram be; ismê aqil li serê Mîr Mehmûd tuneyê...

Xatir ji dê û bavê xwe ne xwestiyê; heyanî ko qederê mişwarkî ji bajêr bi dûr ketiyê ji nû de, dê û bavê Mîr Mehmûdê Cindî, rûniştin halê hevdu digiriyan...

Hey heram be, ji Mîrê Mehmû dê Cindî pê ve, ismê lawê wan tu niye, Mîrê Palo, ji pîreka xwe re gotiye:

go malxerab, me lê helal ne kir, tab û sefîliyê, ji nû ve, dê û bavê Mîr Mehmûd, daw û der lingên xwe rakirin «hilgaftin» dû Mîr Mehmûd ketine...

Çi qey ban dikin, ban na kin, Mîr Mehmûdê Cindî li xwe venegeriya;

Heya ko nîzîkahî li Mîr Mehmûdê Cindî kirine, ji nû de Mîr Mehmûdê Cindî li ser piyên we vegeriya wiha nêrî ko dê û bavê wîna dûwê de dibeziya, ji nû ve Mîr Mehmûdê Cindî serê mehîna xwe ragirtiye, go :

ya bo Xwedê hebîna, hewala we çi ye? go: lawo te berê xwe da welatê xerîbiyê, ko me li te helal ne kir tab û sêfîliyê ko li dinyayê me bi te re diye. Tew lo dilo, tim lo dilo,dil, bi kulo dilo, hêsîro dilo...

Wê gavê Mîr Mehmûdê Cindî, hêdî ji ciwaniyê xwe şiha, peya bûyê çû destê dê û bavê xwe maçî kiri yê go: Xwedê we hebîna, honê li min helal bikin tab û sêfîliya ko we bi min re dîyê...

Wê gavê, hêstira di çavê dê û bavê Mîr Mehmûdê Cindî re avêtiye...

Bavê wî got: lawo, min li te xweş helalbe,ta b û sefîliya komin bi te re dîye. Diya Mîr Mehmûdê Cindî go:

Mi li te xweş helal be şîrê sipiyê..

Xwdê bike tim li dinyayê bi mûm û çira be, daim li pêşiya te vêketiyê... ji nû de, Mîr Mehmûdê Cindî, xatir ji dê û bavê xwe xwestiye,

Bi ser piştа şiho ket, berê xwe da Oxirê, piştа xwe da felekê; hêdî, hêdî dimeşiya...

Hey heram be Mîr Mehmûdê Cindî, ji gava Xwedê xulqa wî daye derê bajêr bi çavê serê xwe ne dîyê. Qonaxik hilanî û yek danî

Qonaxa sê roj û sê şeva li yek tûşê ajotiyê...

«ne qediyaye»

# QURBAN

Yadê qurban...
Serê sibehê, ne tî me û ne birçî me
Mal mîrato, li ser kanîka
Eyinsincê rûniştî me
Xelkê aşiqê malê dinê
Ez bi tenê aşiqê keçka file merdinlî me
Ha wer delal !...
Ev çem ji çemên Bişêriyê
Kelekvana kelek berda pê gemiyê
Ciwaziyê xweş e, ji biçûkiyê;
Belê were tewafa sing û berê Memikê bi sêriyê...
Yadê qurban!...
Serê sibê, kew im û kewê reş im
Li serê xaniyê mala bavê te dimeşim
W'ez aşiqê bejna zirav û çavê reş im
Belê, Gewrê, serê sibehê kew im
Û kewê nêr im;
Li ser xaniyê mala bavê te diçêrim;
W'ez aşiqê bejna zirav, çavê zer im
Destmal sor î, pêşmal şîn î, gul bi gul î,
Keleş Gewrê, ez koçer im, narim deştê
W'ez xencera zîv û zêrê nadim piştê
Belê keleş Gewrê
Sê cara lêxisti bû li tenîştê.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## CENG & BIHINGEH



Kralê Ingilistanê û Şahinşahê Hindistanê Xwedî Tac û Text CORC VI.



Serekwezîrê Brîtanya Mezin M. Çorçîl Balafirvanekî Hêja,Bi Qîmet e.

STOKHOLM— Danezana elemanî a piştî nîro mûkir tê ko di bakurê Krivoy Rogê de yekîneyên Ordiya Sor xetên elemana neqeb kirine.

LONDRE— Refên hevalbendan li meha Kanûna Pêşin 400, a Paşîn 665 û a Sibatê 800 caran dirêjî axa Germanistanê kirine.

# DI WELATÊ ZEMBEQÊ GEWIR DE

Nivîsevan Grigorî Petrof — 18 — Wergerandok Qedrî Can

Ew tiştên ku dê û bavên wan, ji wan re dibêjin: me kin... û dê û bav bi xwe dikin, na keve serê zarokan.

Paşê di wan de ev qenaet çê dibe :

Dê û bav, bi awakî dibêjin, bi awakî din dimeşin. Ji ber vê yekê, îtimada wan, bi gotinên dê û bavê wan na mîn in. Êdin, guhê xwe nadin gotinên: «Vî karî bike, yan vî karî me ke.»

Ji alîkî din, dê û bav gazina dikin, ku zarokên wan hêj teva biçûkayiya xwe, ser-hişkiya dikin, û gotina dê û bavê xwe dişkênînin. Ew, bi xwe nizanin, ku ew bi xwe, dibin sebebê vî tiştî. Hûn bawer me kin, ku bi lêxistin, bi tekdîr û tehqîran zarok çê dibin,na.. Lê hemberê zarokên xwe, wisan hereket bikin, ku ew bi xwe, meziyetê we bibînin û ji we hez bikin.

Hinek dê û bav, li qiyafetê xwe, li paqijiya dest û lingê xwe mêze nakin..., di peyv û galgalê xwe de, guh na din nezaket û nezahetê. Hinek jî ji zarokên xwe re dibêjin : Hûn dibînin ku bavê we çawaye, ka binêrin bê diya we çi jine?! 15—20 salan, zarok di nav vê çiravê de tên hiştin, paşê jî merivên nav sale, dibêjin, ku : Çima zarokên me bê basik di mînin, ber bi ezmana nafirin? Ez, ji dê û bavê wisan dipirsim:

—Gava we xwest ku hûn zarokên xwe terbiye bikin, jî bona bilindbûna wan, we basikên eyloyan dan wan, yan we basikê wan peritandin? Gava ku zarokên wan mezin di bin, dê û bavê wan ji bo pêşî (îstiqbal) a wan jî xeyalan li ser hev datînin; di xwazin ku kurên xwe bikin muhendis, m'emûr, tucar, tuxtor, awiqat, û ya: xwediyê sen'etekî baş. Ji keçên xwe re jî, li mêrekî zengîn digerin. Ji bona zaroyên xwe tenê fikra refah û bextiyariyê dikin. Û bi vî awayî dibêjin ku qey wacibê dê û bavîtî qediya. Ji bo vê yekê( Le Tolstoy) ev gotinên hanê ên qenc kirine;

—Ji bê rêzana jiyînê yek jê ev e ku, her kes di jiyîna xwe de, tenê dixwaze bi gihêje refahê. Lê refaha jiyînê û kêrbûna xebata bi dest, û bi saya xebata xwe, rêzana jiyîna xwe nayine bîra xwe.

Her kes dixwaze, ji jiyînê parekê bistîne û na xwaze tiştekî bide wê. Gelek meriv bi xwed-kam î, bi xesb û tufeylît î dikevin jiyna civatan. Hikmeta jiyînê, di vê tufeylîtiyê de dibînin. Hikmeta jiyîna wisan, bi salan ve, di nav mûhîtê malê de, bi zarokan digre. Kî di be sebeb ? Dê û bav !

Ew zarokên ku vê telqînê distînin, gava mezin dibin, xwedbîn, çavbirçî, şehwet - perest, tiral dibin. Li ser dawiyê ev xortên hanê, bi hezkirin, girêdayî na mînin. Bê qeyd di mînin. Di wan de hezkirina welat, milet, fikrên merivanî û malbatî, hurmeta xebatên qenc pêda na be. Dê û bavê xwe jî bi hezkirineke rast hez na kin. — Hûn çi tov bi kin hûnê wî biçinin.

Hûn çi bibirêjin, hûnê wî bi xwin ...

Heke hûn ruhê xortaniyê mîna zeviya ne çandî, bihêlin, ewê tê de histirî û kelem şîn bibin.

—Dê û bavê ku heş û dilê zarokên xwe bê çandin dihêlin, ne tu wijdane. Heta ez kanim bibêjim, ku ihmalek wisan bê exlaqiy e, cinayet e. Terbiya— stendin û ne tenê bi destê dê û bavan e. Digel vê qasê bendewariya civat û dewlete jî —bi germî— divê.

—Heta hûn dixwazin qanûnê bingehî qenc çê bikin, heta hûn dixwazin di bijartinê de selahiyetê bi dest ehalî berdin, heta hûn dixwazin, bawer bi pirensîpê Komonîzim û sosiyalîzim bikin... heke zarokên we, mîna dil dixwaze, terbiyê negirin, bi hêçî bikevin nava jiyinê jiyîna civakî û parlamanto, giş bê ronî û bi zingar dimînin.

Me'mûrê ku ji nav vî tov, derkevin ihmalkar, wezîrê wan canbaz dibin, meb'ûsê wan jî didin pê fêda xwe û li dû wê baz didin.

( Hêj heye )

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî



Şer Di Nav Devî û Daristanan De Jî Dom Dike.



Topên Zirehpûşan Ên Dijwar Hêjagehên Dijmina Didin Ber Gullan.



Balafireke Elemanî Hatiye Xistin Erdê, Zaro Lê Dinêrin.

# TÊTÎ Û FÎL

Hebû têtîk û Fîlek. Rabû têtî hêlîna xwe li tenişta gevizka fîl çêkir, û ji fîl re got: ya brayê fîl, min hêvî ji te heye, hêlîna min li tenişta gevizka te ye, û çêlîkên min hûr in, wextê tu xwe digevizînî, tu miqateyê li hêlîna min bikî, ji bona ko tu çêlîkên min ne kujî.

Rabû fîl got : ser çavê min brayê têtî.

Têtî rabû û çû çolê, ji xwe re biçêre an bigere, rabû fîl nêrî ko têtî çû, xwe li vî alî, li wî alî, qulipand, xwe li ser hêlîna wê de, qulipand, û çêlîkên wê kuştin, û hêlîn xira kir.

Rabû têtî hat, nêrî ko hêlîna wê xira bûye û çêlîkên wê hatine kuştin.

Ji fîl re go: mi hevqasê tenbiya hêlîna xwe û çêlîkên xwe li te kir, û rabûm ez çûm, û te paş min re, tê hêlîna min xira kir, û tê çêlîkên min kuştin, çi heqê te li wan hebû ko te ew kuştin?

Fîl go: mi kuştin, mi kuştin, çi ji te tê, teqsîr me ke !

Rabû Têtî, ji fîl re go:

Heke ez vê ji te re bihêlim, bila ev kofiya min, ne li serê mi be; û têtî bi hewa ket, û çû cem mezinê teyra, û jê re got, em teyir hemî destbrayê hev in, û erê ez biçûk im, lê ez jî teyrim û ji we me, û hal û mesela çêlîkên xwe ên kuştî, gote wan,

Rabû teyrê baz emrî ser her du teyrê dubira kir û ji wan re go: herin ewê ko ta'dayî li têtî kiriye, heyfa wê hilînin. Rabûn her du teyir û têtî bi wan re, bi hewa ketin, û hatin ser cihê ko fîl lê bû; û têtî ji wan re go: binêrin wiha ye, fîl di gevizkê de ye.

Rabûn her du teyrê dubira, yek ji wan bi hewa ket û ê din daket û li çavê fîl xist, çavekê wî derxist.

Fîl rabû, xwe qulipand aliyê din, ji êşa çavê xwe, teyrê din ji jor de daket, û li çavê fîl ê din xist û ew çav jî derxist.

Rabû têtî daket cem fîl go: ma mi ji te re ne go, ez ji te re na hêlim ? fîl lê vegerand û go bi Xwedê te kir û te teqsîr ne kir.

Têtî jê re go: hîn, bîn, hîn ezê bi te bikim:

Rabû fîl kor bûye, çem jî di binyê re heye, wextê ko tî dibe, li qur û qura dengê req û beqa dire ser çem, avê vedixwe.

Rojekê têtî, çû ji req û beqa re go; ez hêvî ji we dikim, îro honê bên, û bin vê tehta bilind, bikin qur û qur; emê ên biçûk divê qedrê hev û du bigirin.

Rabûn req û beq hatin bin tehtê, û kirin qur û qur, fîl jî tî bûye, û nîro ye, dinya germ bûye,—li qur û qura dengê beqa dire ser çem, avê vedixwe—ra bû, dîsa li dengê van beqan çû ser çem, ew nizane ko req hatine bin tehtê, Fîl hat li dengê wan, serserê tehtê û carekê, di tehtê wer bû û ket, fîl perçe, perçe bû; û têtî heyfa çêlîkên xwe jê hilanî.

A mêra wiha ye.

HUSNIYE MERZIKÎ

IMPRIMERIE DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

Sal 2 — Hejmar — 42

# ROJA NÛ

Duşemb — 20 Adar — 1944

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 15 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 15 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Wêqif Tabet,; Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## KURDISTAN

—1—

**Kurdistan û Welatê Rohelatê Navîn**

Kurdistan hestiyê welatê Rohelatê Navîn ê zînê ye. Piraniya çiyayên bilind û çeleng yên ko ji Behra Reş — di nîzîkî Qefqasê de — heta xelîca Ecemistanê dirêj dibin, çiyayên Kurdistanê ne, û li roavayê welatê Kurdan de, deştine bi av û kanî, deştine mezin û têr zad û dexil hene.

Di axa Kurdistanê de nijadekî bitenê rûdine, ew jî nijadê Kurd e.

Kurd mêrxas û xebatker in û ji neh milyonan bêtir in; ew hêjî azahî û serbestiyê dikin, xwediyê gotina xwe ne, dilvekirî ne, xudanbext in, qedrê xerîba digirin, têkilî dîn û karê cîranên xwe na bin, û heqê cîranên xwe nas dikin: bav û kalên wan wiha bûn, ew jî îro welê ne.

Ji sarîsibeha dinyayê, ji demên destpêka tarîx û dîrokê û vir da, kurd di Kurdistanê de rûdiniştin; îro jî tê de rûdinin û xwediyê erdê xwe ne. Çav û dîroka cihanê ew li wê erdê dîtine.

Zimaв, xwîn, nijad, tevgerrabûn û rûniştin, wan ji cîranên xwe vediqetîne. Cîranên wan li roavayî tirk, li bakur-rohelatî ûris, li rohelatî ecem û li nîroyî ereb in.

Hemî axên Kurdistanê pev re girêdayî ne, ev perçeyek bi serê xwe ye; û maldarî, paşrojmendî, mal û dewlemendiya Kurdistanê têrî wê dike û besî wê ye.

Bêşik, Kurdistan rojekê di rewiş û jiyîna nijadên welatên Rohelatê Navîn de, karekî mezin û girane wê pêkbîne.

**Sînorên Kurdistanê**

Li roavayî xêzekê ko ji çiyayê Kurdmanca — erdê Suriyê — derdikeve û di bakurî de ji Kilis, Meraş, Elbistan, û Dîvrikê derbaz dibe û digehe ava Kelkitê.

Di nîro roavayî vê xêzê de gund û şaristanên kurdî hene û ew digehin heta xelîca Skenderonê — Behra Spî—.

Li bakurî: xêzekê ko di ber ava Kelkitê re dirêj dibe, ji rohelatê bajarên Beyburt û Oltiyê dibore û digehe Qersê.

Di bakurê vê xêzê de jî kurd hene û gundên wan digehin heta Behra Reş.

Li Rohelêt: xêzekê ko ji Qersê derdikeve û ber bi nîro-rohelatî ve dirêj dibe û piştre rex qeraxên gola Urmiyayê ên roavayî û ji rohelatê erdên Loristan û Bextiyara û Sine û Kurdmancşahê—Kirmanşah—dibihore.

Li nîroyî: xêzekê ko ji Loristana Nîroyî derdikeve û ji bakurê Xaniqînê û Kifriyê derbaz dibe û ber bi nîroyî ve tê û digehe heta çiyayê Hemrînê û jê ber bi roavayî ve difitile û ji nîroyê çiyayê Şingalê — Sincarê — dibore û di nîzîkî Qereblisê de digehe ava Feratê.

**Tixûbên Kurdistanê ên Siyasî**

Berî şerê mezin — 1914—1918 — axa Kurdistanê destê hikumetên Osmanlî, Ecem û perçak jê di bin hikmê Ûrisa de bû. Piştî wî şerî gava hikûmetên Ewripayê ên mezin û tirka bext danîn nav xwe û pê li hev hatin, erdê Kurdistanê di nav bira dewletên Tirk, Ecem û Iraqê de hatiye par kirin.

Di Sovyetistanê de bi tenê sed û şêst hezar Kurd hene û ew bi arîkariya hikûmeta rûsî pêş ve çûne û di pirsên ziman û zanînê de xwediyê azahî û serbestiya xwe ne.

Ji axa Kurdistanê ya ko ketiye destê tirka,li aliyê nîroyî perçeyeke dirêj jê hate birîn û ket bin hikimraniya Frensê ya erdê Suriyê.

Sînorên Tirkiya û Iraqê bejna Kurdistanê şikestiye û pêşveçûna miletê Kurd bi salan ve paş de hiştiye. (Encyclopedia Britanica; çap 14, Sernav—Mossul)

**Erdnigariya Kurdistanê a Beşenî û Hatinên Wê:**

Kurdistan erdekî têr çiya û zozan e; lê deştên fireh û feyizdar jî tê de hene; xesma deştên Pasin Mûş, Xerpêt, Cizîr, Diyarbekir û neval û navdeştên ava Dicle û Firatê bi nav û deng in.

Xelkên Kurdistanê ji her tiştî bêtir bi cotkariyê mijûl in, û di axa wan de her texlît zad û dexil digehin; rez û bîstanên wê jî hêja ne; ceh, genim, garis, titin, her texlît dar, giya û heşînatî, behîv, hejîr, goz, sêv, karçik, mişmiş, hox, hirmê, gilyas, tirî, tu, hinar, zeytûn, zebeş bi piranî çêdibin û gelek tamdar in.

Pez û dewarên Kurdistanê jî zehfin û çêreyên di wê xurt in û têrgiya ne.

Erdê Kurdistanê tejî madenên hêja û giranbiha ye, lê di nîzîkî Diyarbekrê de paxir û di Kurdistana nîroyî de kaniyên gazê—yên ko bi navê gazên Mûsilê û Iranê hatine nas kirin—pê ve madenên wê ne hatine vekirin û şixulandin; di axa Kurdistanê de hesin, berê komirê, paxir, sifir, tûtye, rayên renga, zîv, zêr, zirêç û ji zehf texlîtên din madenên qîmetgiran peyda dibin.

Di Kurdistanê de hin karxaneyên caw û qimaşa hene, û di mala de xelk bi her texlît destxeta mijûl dibin; ji hirî, pembû, kitan, û hewrûşimê, eba, betaniye, mexfûr, mêzer, cicim, xalîçe, caw û qimaşa û bi çerm û eyara û ji dar, ax, kevir, hesin, pola zîv û zêrî pir tiştine çeleng û bêjayî çêdikin; ji xwe polayê Kurdistanê, zîvker, û zêrkerên wî erdî, li dinyayê bi nav û deng in.

Kurdistan zehf hirî, mûyê bizina, berû, gezû, masiyên xweykirî, pez û dewar, çerm û eyar, rûn, penîr, giyayên dermana,, fêkî, hingivî,titin..,digîne bazarên cîrana. Di Kurdistanê de ji bîstan bêtir bajar û şaristanên mezin hene, xelk û rûniştimanên wan ji 30 û heta 50 hezar in.

Bajarên Kurdistanê ên mezin di Kurdistana Roavayî de ev in: Diyarbekir, Merdîn, Xerpêt, Meletye, Erzerûm, Erzingan, Mûş, Wan, Bitlîs, Rohe..,

Di Kurdistana Rohelatî de: Sewişbilax, Sine, Kurdmancşah Seqiz, Urmiye...

Di Kurdistana Nîroyî de, Sileymaniye, Kerkûk, Zaxo, Rewandiz, Koysenceq, Hewlêr, Amedî... bajarên Kurdistanê ên mezintir in.

## DER ENIYA PESIFIKÊ

WEŞINGTON— Refên emerîkanî ji nû ve li giravên Ponapê û Kusaiyê xistine, li rohelatê Karolînê, giravên ji yên Orta Pesifîkê ko di destê Japona de ne. Çekê emerîkanî ê hewayî 30 ton bombe berdane hêjagehên Japona.

Serfermandarê stola emerîkanî Emîral Çester W. Nimitz di civanê rojnamevanan de gotiye: Dilê me teng dibe ko em nikarin rastî cengkeştiyên Japonî ên mezin bên, noqavên me hinde zehf gemiyên Japonî ên bar û banzînkêş bin av kirine ko stola Japonî êdî ji bona geşt û gerên dûr û dirêj, tiştên ko hewce ne nikare bi xwe re bigerîne an bîne, û wilo dixuye, beriya ko emê bikevin heta kezeba Pesifîkê Japona yekîneyên stolên xwe ên mezin, li vê deryayê bi şûnda kişandine. Emîral Nimitz jê pê ve da zanîn ko girava Majuroyê, li nîroyê giravên Marşalê ketiye destê qiwetên emerîkanî.

BERN— Radyoa Elemanî dide zanîn: Ordiya elemanî xwe ji bajarê Umanê bi şûnda kişandiye.

MOSKÛ— Yekîneyên Ordiya Sor Uman standiye.

CEZAYIR— Qerargeha Hevalbendan a mezin li Eniya Behra Spî dide zanîn: duhî tevdana kewte û sedmêran dom kiriye, nexweşiya hewayî li reşayiyê qelqên eskerî ên mezin aciz dike.

Refên Hevalbendan êrîşî bendera San Stefano û bajarê Mont-Aldo dî—Kastroyê kirine. Bombeavêjên me ên sivik di nîzingî Kampo—Leonê de li şargeh topçiyan û li rêhesinên erdê Kaparanikayê xistine.

Ji aliyê din refên me bi ser qada şerî re firiyane û karê xwe ê dîdevanî û nobetdariyê pêk anîne.

Yekîneyên çekê Hevalbendan duhî 900 cara bihewa ketine. 30 balafirên dijmina, di sêr serpirê re hatine dîtin.

LONDRE— Bombeavêjên brîtanî şevêçûyî di Frenseyê de li Karxaneya balafiran a Marinyanê xistine. Raporên pêşîn xuya dikin ko derba xweş cihên xwe girtine.

LONDRE— Eskerên Hevalbendan ji destpêka cengê erdê Italyayê û heta niha 15.000 eskerên elemanî hêsîr girtine.

## BER BI SERFIRAZIYÊ VE

Hefta borî yekîneyên Ordiya Sor Uman xelas kirine. Şerê ko niho çêdibe, ne şerê paqijkirina erdê Sovyetistanê ye. Ordiya Sor di nav axa Polonyê u hikûmetên Baltîqê de û li nîroyê, ber bi sînorên Romanyayê ve pêş ve diçe. Şer hêdî, hêdî digehe erdê Belqana. Ji xwe êrîşa sovyetî a havînê, di nav berf û baranên zivistana nê de jî, bi awakî brûskîn dom kiriye û li devê deriyê biharê de jî, ev êrîşên he, bi xurtiya ko sist bûn çiye nas na kin, dom dike.

Erîşên Hewayî: Refên Hevalbendan piştî bombardimanên bajarên elemanî ên mezin, bombardimanên ko hêj dom dikin, ev du roj in zor didin hêjagehên elemana yên peravên Ewripa Roavayî.

Bombeavêjên giran di nav du rojên dawîn de, du cara li Pa-de Kaleyê xistine.

Wilo dixuye ko nêçirvanên elemanî di şerê berevaniya erdê xwe de sist ketine, û di nav sê rojên dawîn de, di ser hêjagehên erdê elemana û ên vegirtî re bombeavêjên brîtanî û emerîkanî rastî nêçîrvanên elemanî ne hatine. Ji xwe çekê Hevalbendan ê hewayî, bi bombardimanên dawîn, dixwestin bigehin du armancan: bêmecal xistina karxane û kar û barên elemana ên eskerî û şkênandina nêçirvanên wan.

Ev her du tişt niho pêk tê. Rewişa dest brayên biçûk: Pêşveçûne Ordiya Sor a dawîn serekên Bilxaristan, Romanya û Mecaristanê, xistine tengiyeke dijwar. Ordiya Sor mîna bedenek pola pêş ve tê û li tu derî elemana nikarî bûn, ber ve hatina wê bisekinîne. Halê Fenlandayê ê dijwar jî di pêşiya wan de ye.

WEŞINGTON— M. Edward Stetinus duhî gotiye ko ewê bibe serekê kardariya emerîkanî ya ko ji bona peyivên ser pirsa petrolê wê bête danîn.

CEZAYIR— Komîte frensizî a xelasiya Welêt îro serê sibehê, di bin serekiya General De Gol de civanek danî.

LONEDRE — Pêşveçûna yekîneyên Ordiya Sor di axa Krivoy Rogê de dom dike, xetên elemana li zenf deran hatine neqeb kirin.

LONDRE— Duhî jî bombardimana hêjagehên axa Germanistanê û yên vegirtî, bi destê refên Hevalbendan, dom kiriye.

LONDRE— Ingilistanê de ji bona bar û rewîngiyan heft texlît balafir têne hazir kirin. Piştî şerî ew balafiren he dest bi xebatê bikin.

LONDRE— Danezana elemanî mukir tê ko Xerson ketiye destê Ordiya Sor.

MOSKÛ—Du sed û heta sê sed hezar eskerên elemanî — ango 20 û heta 30 firqe — di enişka Dnieprê de tengiyeke giran de ne. Her wekî yekîneyên Ordiya Sor di nîroyê Umanê de, ber bi Bugê ve dimeşin, dera qiwetên elemanî her dom dikare bête girtin.

# DEMA NIHA

## GOTARA GENERALÊ ELEMANÎ

LONDRE— Duhî êvarê pêşekarê elemanî ê eskerî General Dîtmar di Radyoa Berlînê de qala rewişa eniya Ukranyayê kiriye û gotiye: Bê şik niho barê me ê girantir di eniya rûsî de ye. Nayê inkar kirin ko serfermandariya sovyetî piştî ketina Jitomirê bi şehrezayî û hinerwerî karên êrîşên xwe gerandine.

Qiwetên rûsî pêş ve dikevin, û rewişa Ordiya me zehf giran e. Ji aliyê din qiwetên rûsî Uman standine û cengên ko Tarnopolê de çêdibin, xurtiya pêşveçûna yekîneyên rûsî hêj bêtir têxe ber çavan

Wext divêtin heta ko Ordiya me bikare xwe ji vê tengasiya giran xelas bike. Herî, herî hikmî qada şerî dike, herî çûn û hatin û kom û kar û bar bûna eskerên me bi şûnda dihêle, lêbelê ew arîkariya qiwetên rûsî dike.

General Dîtmar, bi gotinên xwe, rewişa Ordiyên elemanî ên dijwar, pêş xelkê dike.

MOSKÛ— Rewişa elemana di nav 24 saetên dawîn de der Ukranyayê zehf giran bûye; Ordiya sor êrîşa xwe pêş ve dajo û bi firqeyine nû—anî direjî elemana dike.

LONDRE— Di nav du rojên dawîn de refên brîtanî û emerîkanî ji nû ve bajarên elemanî ên mezin, Stutgart, Munîx, Ulm û Ewsburgê bombardiman kirine. Qiwetên brîtanî ji hezar balafiran bihevketî direjî wan hêjagehan kirine.

Moskû— Yekîneyên Ordiya Sor di axa Proskurov, Vinitza, Apniarka, Kirovograd û Nikolaîvê de pêş ve dikevin, û elemana dişkînînin. Rêhesina Odesa—Lwowê hatiye birîn.

# QEWIL

### QEWILÊ ŞÊX EBDILQADIR

Li ber hisn u cemala te
Çavê di reş ın xiyala te;
Çi qeyis bêjim navê te ye.
Xêyr û herket zozanê me ye
Ya ho, ya Geylanî..
Buxdad burcê ewliya ne
Kerkûk cihê curdıya ne
Mûsil textê enbiya ne
Cizîr aneqamê uema ne.
Tillo cihê qasida ne,
Stenbûl textê her Siltan e;
Mizgîn geriya li nav şêxa ne;
Ebdilqadir bû Siltan e.
Bû Siltanê ber û bebran e.
Çûm Buxdayê çar derî ne,
Her çar derî qubletî ne.
Çar qutbê Kamil lê rûniştine
Ya ho, ya Geylanî.
Çûm Buxdayê her dem li pêş,
Hero diçim tê me derwêş.
Heger tu şêx î, medhan bibêj,
Li ser cemala te, ez bûm kher û gêj
Ya ho,ya Geylanî, ya Geylanî!
Ostayê min tu î,ma'rûfê min tu î,
Ya Xewsê li germiyanê;
Ji Buxdayê derketî der e,
Ser u bisî derwêş, li ser defter e
Buxdad stendî, bi gulek zer e
Ya ho ya Geylanî, ya Geylanî!...
Li Nisêbînê Zeyn Abdîn e
Ewê li Şamê, Şêx Muhiyedîn e
Destûr ya Geylanî, ya Geylanî!...
Ez ban te dikim, tu dey na kî
Tu bi qedrêMihemed, Mistefakî,
Roja li heşrê li me bi ria kî,
Reca me ji Xwedê û pêxemberan kî
Ya ho,ya Geylanî, ya Geylanî!...

### QEWILÊ WEYSUL QERANÎ

Weysul Qeran bazê zer e
Li ser qumbetê derket der e
Destbrayê pêxember e,
Weysul- Qeran bazê sipî ye
Kerîm-Ullah, rehîm-Ullah
Rehmet li Weysul Qeranê.
Ezê sed salê li dinyê bim
Bi zîv û zêr xemlê bim,
Şevkê mêvanê qebrê bim.
Hey min çi kirî, min çi biderda
Sifrê sohir bu, bi zêrê werda
Rehmet li Weysul- Qeranî hey!..
Emê bimirin roja çara
Wê me deynin ser best û du dara
Emê bibin mêvanê mişk û mara
Goştê me bixwin teba û heywana
Silav kir li hêtê wan diwara.
Tirba min î çend î direj e
Têde ye marekî kher u gêj e
Dixwe goştê merevê tarik selat.
Tirba min i, li nav tirba ne
Dilopek hatî ser çavan e
Ev ezabê dê û bava ne.
Dilopek hatî ser eniyê
Ev ezabê cirantiyê
Heçî li nêja hindik texsîr e
Agirê cehenenê, xwe; wezîr e.
Wek xinzîrê sto bi zencîr e.

# Derdê dilê min

Dilbirîn bûm ez ji derdan, min ji ber fîxan û jar
Şev û rojên xew tu nîne, nîn li yek qîr û hewar
Sed dax û sed key li sînim jê dinalim, pir gelek
Hêstirên çavan dinalim, rengê barana bihar
Miletê kurd maye bes evja û dil,û qels û kher
Ev çi jîn e,em dibînin, di bin dest û pê neyar
Serê xwe rake ji xewa xefletê, carek binêr
Roj ji bircê derhilate, gulşe bû çol û beyar
Berî ko roj derkeve miletê dinya ser xwe bûn
Miletê kurd bes tenê mîna werîsê bin dstar!
Dijminê kurd e ji dil bê xwende û bê serxwebûn
Lê divêtin bome her dem, em hemî tev bin şivar
Êdî bes xîret bikêşin, dil li min bûye birîn;.
Jin li min bûye bela, lê can li min bû tar û mar.

AMÛDE: NAYIF HESEN

## BOMBARDIMAN

LONDRE— Refên brîtanî û emerîkanî ev çend roj in, hêj bêtir zor didin hêjagehên elemana yên peravên Ewripa Roavayî û rê û rêhesînên ko ji axa elemana ber bi roavayî û direj dibin.

## HEVAL

Eman heval eman heval
Ji ber derdan bûm pîr û kal
Di bin destê neyaran de
Nexweş ketim, bê mah û sal
Nexweşdarê meh û sal im
Ji ber jana dil dinalim
Meger dilxwîn, bi geş bûye
Wekî bilbil her dinalim;
Gelî xortan wekî şêr bin,
Divêtin, em hemî bi kêr bin
Ma ne bes e êşa evîn
Ji ber kulan ketim nivîn
Bi salan pîr nexweş ma bûm
Lewra dilê min bûye xwîn.

ÛSÊ HECÎ HERSAN

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## CENG & BIHINGEH

## HATINA GENERAL BEYNE



1 — Nimînendeyê Frensê li Sûriye û Libnanê û Serfermandar General Beyne. ji aliyê çepê ber bi rastê ve zabitê sisiyan Komandan Lakriwa ye, dostê me ê delal.



2 — General Beyne û Serekcimhûr Şikrî Beg Qiwetlî pev re daxêvin.



Srekcimhûrê Libnanê Mîrza Şêx Bişara Xûrî û Serekwezîrê Libnanê Mîrza Riyad Beg Silih û Wezîrê dervekariyê Libnanê Mîrza Selîm Teqla çûne xatirxwaziya General Beyne.

Ji Qerageha Hevalbenda a mezin li Italyayê: Duhî bajarê Kasinoyê bi awakî zurt, û heta niha di eniya talyanî de ne dîtî, hatiye bombardiman kirin. Çekê hevalbendan ê hewayî 3.000 caran bi hewa ketiye û ji serê sibehê û heta nîroyî li vî bajarî xistine. Refên hevalbandan li erdê ko 1.800 mêtir çar goşe fireh e, 1.400 ton bombe avêtine. Qesda vê bombardimanê xira kirina topên elemanî bû.

Piştî vê lêxistinê topçiyên emerîkanî û brîtanî dest bi bombardimana çeper û kozikên dijmina kirine, û peyadeyên Hevalbendan rabûne êrîşan

MOSKÛ— ji 6 ê Adarê û heta donzdehan yekîneyên Ordiya Sor yên eniya Ukranya sisiyan 155 tang, 390 topên navhincî, 64 topên mezin, 230 qumbereavêjên çeperan, 950 mitralyoz, 68 otomobîl û kemyonên zirh kirî, 57 traktor û 3.830 otomobîl xira kirine û 87 tang, 50 topên gir, 338 topên hûr û navhincî, 142 qumbereavêjên çeperan, 1.077 mitralyoz, 8.200 tifing û otomatîk, 24 otomobîl û kemyonên zirhkirî,121 traktor,5.342 wagon û gelek çek posat û zad û zexîre ji dest ve girtine û 2.000 eskerên dijmina hêsîr kirine; 20.000 kuştiyên elemana li erdê mane.

2ème ANNEE — LUNDI 20 MARS 1944 — NUMERO 42

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 15 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 15 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## KURDISTAN

— III —

### RÉLIGION

Les Kurdes sont en grande majorité musulmans sunnites, de rite chaféite. Seules, quelques rares familles princières, comme celle des Ardelan, en Iran ont, pour des raisons politiques,adopté le chiisme.

Elles n'ont pas été suivies dans cette voie par leurs sujets, et il en est résulté pour elles une perte de prestige, bientôt suivie de leur chute.

Signalons également l'existence, au Dersim, d'une secte encore très mal connue, mais de tendances chiites extrémistes, celle des «*Qizilbach* » ou « *Alawi* ».

On trouve aussi des Kurdes chrétiens, ils sont de rite jacobite, nestorien ou arménien. Il est impossible de terminer ce paragraphe sans citer la curieuse communauté des Yezidis, jadis fort nombreuse, moins importante de nos jours, mais encore représentée par quelques groupes assez considérables dans les régions de Mossoul (au Cheikhan et au Djebel Sindjar), d'Alep (Kurd Dagh), de Nissibine et de Tiflis. Certains voient dans cette religion un dernier vestige du Zoroastrisme ; elle est, en réalité le produit d'un amalgame de très vieilles croyances indo-européennes, de survivances gnostiques et de doctrines islamiques très déformées. Elle admet l'existence d'un Dieu, assisté de sept anges, dont le principal, Tawusé Malak, l'Ange-Paon, n'est autre que Satan repenti et rentré en grâce. Ainsi, loin d'adorer le diable, comme on le croit trop souvent, les Yezidis nient son existence ; pourtant, ils n'ont pas su tirer d'un tel postulat toutes les conséquences qu'il devrait logiquement comporter, puisqu'ils continuent à accepter la notion du bien et du mal, et qu'ils croient à la métempsychose, purificatrice des âmes.

Musulmans, chrétiens ou yezidis, les Kurdes n'attachent guère d'importance à la pratique journalière de leur religion, et les représentants des trois confessions font bon ménage à l'intérieur de nombreuses tribus mixtes. Il est cependant intéressant de noter que, chez tous, les dignitaires religieux sont l'objet d'une profonde vénération, sans doute parce que les fidèles, par trop négligents de leurs devoirs sacrés, voient en eux des intercesseurs dont il est utile de se concilier la bienveillance sur cette terre, si l'on veut être assuré de leur protection dans l'au—delà. La plupart de ces chefs spirituels se recrutent héréditairement dans certaines familles. Beaucoup d'entre eux, chez les Musulmans et chez les Yezidis, ont usé de leur influence morale pour jouer un rôle politique prépondérant.

### LANGUE ET LITTERATURE

Le kurde se rattache au groupe linguistique iranien ; il est par là proche parent du persan, avec lequel il présente de nombreuses similitudes. Il comporte trois dialectes principaux, le kurmandji, usité au Nord et à l'Ouest, celui du Sud (parfois appellé sorani, ou baba kurdi) répandu dans la région de Suleymaniyé et à l'Est, le dumeli, ou zaza, qui a pour domaine les districts voisins de Kharpout et de Biredjik, ainsi qu'une partie du Sasoun. Les trois parlers se différencient par quelques particularités grammaticales, et de vocabulaire.

De nos jours, les périodiques, revues et journaux, contribuent puissamment à unifier la langue: il en parait actuellement quatre en Syrie (en kurdmandji, et en caractères latins) trois en Iraq (en sorani et en caractères arabes), un en U.R.S.S. et un en Iran (tous deux en caractères latins).

La littérature kurde est tout à la fois très pauvre et très riche; très pauvre si l'on ne considère que la littérature écrite, mais d'une richesse fabuleuse si l'on envisage la littérature populaire, transmise oralement.

La première, la moins intéressante, ne comporte que quelques oeuvres, en vers, toutes très marquées d'influences persanes. Les plus connues sont le Divan de Malayé Djeziri (XVe ou XVIe siècle), le Mam o Zin d'Ahmed Khani (XVIe — XVIIe siècle ), pour le kurmandji; les divans de Nali et de Hadji Qadir Koyî (XIXe siècle) pour le Sorani. Mam o Zin, version poétiqueet savante d'une légende très répandue reste particulièrement remarquable pourl'époque à laquelle il fut écrit, par les sentiments patriotiques qu'il exprime. On en trouvera plus loin une extrait.

La littérature orale est d'une étude bien plus attachante que sa soeur savante; il faudrait des années de travail pour recueillir tous les chefs d'oeuvre qui la composent. Le conte, les chansons d'amour, de guerre, de danse et de gestes en sont les principaux genres; mais, tandis que les productions qui relèvent des quatre premières catégories sont également connues de tous, la transmission des chansons de gestes était, autrefois, et demeure encore, dans une certaine mesure, l'apanage de bardes professionnels, les «dengbêj»,que l'on ne saurait mieux comparer qu'à nos troubadours du Moyen Age. Capables de réciter, sans défaillance de mémoire, des poèmes de plusieurs milliers de vers, ils étaient aussi, à l'occasion, improvisateurs. Certains vivaient en vagabonds, d'autres étaient attachés à la cour des princes. Les compositions des «dengbêj» célèbrent, pour la plupart, des exploits guerriers, mêlés d'épisodes amoureux. Beaucoup remontent à des époques très reculées, et leur intérêt historique ne le cède en rien à leur valeur littéraire, ils constituent en quelque sorte, les annales du Kurdistan.

Actuellement, la littérature kurde entre dans une phase nouvelle, grâce surtout à l'activité des revues, et l'on assiste peu à peu à la naissance de genres, comme l'essai et la nouvelle qui, pour être diffusés par l'imprimerie, n'en restent pas moins populaires, car leurs auteurs se préoccupent avant tout d'être compris de tous,

### LA SOCIETE KURDE

Bien que les multiples bouleversements qui suivirent la guerre de 1914—18 aient à peu près complètement transformé la physionomie politique du Kurdistan, il n'est pas sans intérêt d'esquisser un tableau sommaire de la société kurde, telle qu'on pouvait l'observer il y a une vingtaine d'années, telle qu'elle subsiste encore de nos jours dans certains pays.

ROBERT SURIEU

*(à suivre)*

### DIX ANS APRÈS

## La Mort D'ALBERT 1er

par CHARLES d'YDEWALLE (Suite)

*Ni les études, ni le milieu familial ne l'y avaient beaucoup préparé. Ni latin, ni grec, ni mathématiques générales. A 17 ans, quand il entra à l'Ecole Militaire à Bruxelles, c'était un grand garçon fort peu cultivé. Longtemps après, quand il eût acquis, par la pratique des livres et des hommes, la haute culture qui seule complète la formation des grands esprits, il avait coutume de déplorer ce temps de la jeunesse, où on ne lui avait rien appris.*

*A tous ceux d'entre nous qu'il honora de sa confiance, il réserva de longs entretiens et nous pûmes découvrir en lui le plus extraordinaire autodidacte de notre époque, en géographie et en histoire, sa mémoire prodigieuse lui fournissait une documentation d'une sûreté inouïe. Tout l'avait porté d'abord beaucoup plus vers les sciences exactes et les machines. Il était de son temps. A quinze ans, il démontait et remontait des phonographes en un temps record. Quant à la botanique, il la pratiquait d'instinct, comme tous les Princes de la Famille qui, d'Albert Prince Consort d'Angleterre à Boris de Bulgarie, allèrent dans la vie, un herbier sous le bras. La culture humaniste n'était venue qu'après, quand le soleil de la vie eût mûri cette abondante documentation.* Ripeness Is All, *dit le Roi Lear. Etre mûr. tout est là. A la fin de sa vie, le Roi nous déconcertait parce qu'il avait la passion d'Aldous Huxley et de Paul Valery. Le milieu de son beau-père l'y avait poussé. La Reine Elisabeth, duchesse de Bavière, était fille d'un oculiste des plus distingués de Munich. Par là, comme par la Comtesse de Flandre, le Roi tenait de près à ce milieu de dynastes allemands demeurés très anti-prussiens, très éclairés, et, catholiques ou Voltairiens, toujours épris des Lumières. Le « Mehr Licht » de Goethe paraît être la devise suprême de leur tradition. Albert 1er, qui avait manqué de racines grecques et latines n'en fut que plus tourmenté par le démon de la connaissance. A La Panne, dans l'intense mélancolie d'un séjour guerrier, il lisait, ses yeux de myope penchés sur des livres, et il passait de longues heures avec Vandervelde et Verhaeren, parce que le doctrinaire socialiste et le poète des heu*res claires *l'intéressaient bien moins que les hommes de haute culture, qu'ils étaient l'un et l'autre. Avec eux s'élargissait le champ immense de la découverte. Ainsi s'établissait le contact entre la monarchie et le monde intellectuel, si particulier aux règnes d'Albert et de Leopold III. On les comparera aux plus belles époques des ducs de Bourgogne. En fait, ce sont des Princes universitaires dans la tradition du 18ème siècle, libéraux et novateurs, très conscients de leur destinée auguste, mais à l'affût de toute nouveauté. On se rappelle l'intérêt que portait Albert aux ascensions stratosphériques du Professeur Picard dont il avait fait sa chose. Mais, au soir de sa vie, c'était l'avancement des Sciences en général qui le tourmentait, et toute la philosophie des événements.*

*Peut-être est-il heureux que lui, le philosophe, l'homme de famille, le Prince qui par une pratique constante de la politique avait acquis la pleine maîtrise de ses hautes qualités, soit tombé quand il était au zénith.*

*Il avait horreur de la maladie, et ne nous le cachait pas. Bâti à chaux et à sable, il lui déplaisait d'être malade et tout traitement médical l'humiliait. La Providence lui réservait de mourir à soixante ans, sans souffrance, tout seul et sur la terre de Belgique. Il fallut une équipe de spécialistes du rocher pour que le roi Albert fut retrouvé, la nuit, au clair de lune entre deux rocs qui surplombent la Meuse, quand le Royaume s'endormait.*

*Toute ma vie je me rappellerai ces entretiens en tête-à-tête dans l'immense bureau de Laeken. Un bureau improvisé, dans un salon démesuré, plein de meubles disparates. Une table immense chargée de dossiers et de livres, un fauteuil à sa dimension, une mappemonde et un canari en cage ; ceci n'était pas le moins inattendu de ce tableau intime. L'homme que hantaient les grands problèmes d'histoire et de philosophie, qui discutait avec Einstein et Broglie, se tournait constamment vers cet oiseau des Iles, lui parlait doucement avec humour. Sur la table, dominant tous ses dossiers, ses portraits d'enfants et de petits-enfants souriaient.*

*J'ignorais qu'il eut sa chambre à coucher exactement à côté. Le dimanche soir, 18 février 1934, je fus invité à traverser le studio du Roi. Un dignitaire m'introduisi dans l'appartement contigu. Le Roi était là, mort, en grande tenue de Lieutenant Général. Deux petites religieuses, venues du quartier le plus pauvre de Bruxelles, égrenaient lentement leur chapelet, agenouillées, les mains jointes, à son chevet.*

*Les Anciens Combattants et les Associations les plus puissantes du pays envoyaient, en quantité, des oboles généreuses pour qu'un artiste élevât un monument à sa mémoire. Le Roi Léopold III recevant ces cadeaux, décida d'en faire une Bibliothèque. La Bibliothèque Albertine. Aux dons incomparables de la Loyauté et de l'Honneur, ce Roi avait ajouté ceux de la Science, et ce geste d'un fils élevant à la mémoire de son père une bibliothèque savante, n'est-ce pas le plus beau cadeau qu'une Dynastie puisse faire à l'esprit ? Tout homme, ici bas,se doit de laisser aux siens un message. Celui qui, dans l'accomplissement d'une fonction royale n'aura laissé que des Traités ou des Accroissements de territoires n'aura bâti que sur le sable des monuments que l'Histoire défait. Albert 1er laissait à la Belgique un bien autre capital que les hommes sont libres de garder toujours, même aux heures les plus sombres de leur captivité : le Capital de l'Honneur et des Valeurs Spirituelles. Dans la grande tristesse du temps présent, aucune armée d'occupation, aucun zélateur de l'Ordre Nouveau, ne les leur enlèvera.*

*Dix ans après sa mort, Albert 1er demeure encore, et plus que jamais, une grande figure d'Actualité.*

ÇÎROKA KURDÎ

# SERBORIK

## Paşa û Berdevkê Xwe

Dibêjin, carekî paşa û berdevkê xwe çûn gerê û rastî kalekî cotkar hatin.

—Paşa go: Kalo, qiwet be!

Kolo got: ser seran û ser çavan hatîl

—Paşa go: Kalo,tu çire zû ne çandî?

Kalo got: paşa min zû çand û li berdas bû, teyrokê lê da û bir.

—Paşa go: kalo, dûvê te çawan in?

Kalo got: dùvê min bûne sisê!

—Paşa go: Kalo dûrê te çawan in;

Kalo got: dûrê min nîzik bûne.

Paşa go: Kalo ezê qazekî bê pirçikandin bişînim, qeno bipirçikînî!

Kalo got baş e.

Paşa û berdevkê xwe hatin mal û paşa ji berdevkê xwe pirsî û got: min û kalo çi xeber daye, ji min re bêje, an ezê serê te jêkim.

Berdevk bi dilekî kul, çû mal û serhatî ji jina xwe re got: jina wî go: here cem kalo û çi perê bi xwe re bibe û xwe ji vî belayî xelas bike.

Berdevkê paşê rabû çû ba kalo û ji kalo pirsî.

Kalo got: te çi aniye?¡Berdevk got:tu çi bi xwazî, min ji te re aniye û bi Xwedê êdî, ji vî û pê ve pere li ba min ne maye. Kalo go: bes e, ezê gotinên xwe û paşa jî te re bêjim.

Paşa pirsî, te çire zû ne çand, yanî te çire zû ne zewicî, min got; ez zû zewicîm, lê zarokên min mezin bûn û mirin; paşa go, dûwê te çawan in, yanî her du lingên te çawan in, min go, dûwê min bûne sisê, yanî ez darek didim ber xwe, paşî bi rê ve diçim; paşa go, dûrê te çawan in, ya çavên te çewan dibîne? min go, nîzik be dibînim; paşa go, qazekî bê pirçikandin bişînim, bipirçikîne, eva tu ji min re şand, min tu pirçikand, perên te min ji te standin. E. S.

# SEVOKA HECI

4

Tew lo dilo, tim lo dilo, perîşano dilo...

Mîr Mehmûdê Cindî heya ko bi nav diyar û berwarine halî ketiye, çû bû cîkî hewle cî ye; ismê însana li welata tu ni ye;

Mîr Mehmûdê Cindî carekî wiha nêriye ko qîzek li ser devê rê li pêşiyê, sekiniye;

Heyanî ko Mîr Mehmûd giha cem wê qîzê, hêdî wê qîzê desta vêt rişma mehîna wî ye;

Go: ya xortê qenc, Xwedê hebîna îşê te li van deran çi ye? Tu ji kû de têyî, tu herî kû, ma hewala te çi ye?

Mîr Cindî ji vê qîzê re gotiye: Xwedê hebîna, tu rişma mehîna min berdî, riya min dûr e, taliya wê tuniye!

Wê gavê Çîçeka cinî, ji Mîr Mehmûdê Cindî re gotiye; mesela xwe ji mi re bibêje, mi li destê xwe mala te xira kiriye, tu dihn î, ismê aqil, li serê te tu niye; ko tu soz bidî, bi sozê mêrê berê, ez miradê te bikim bi Sêvoka Hecî, tu min jî, li ser mehr kî, bi hêwîtiyê...

Wê gavê, Mîr Cindî li bejn û balê çîçeka cinî nêriye, soz da ko—bi sozê mêrê berê—ko tu miradê min bikî bi Sêvoka Hecî, eze, te jî li ser mehir kim bi hêwîtiyê.

Wê gavê çîçeka cinî li Tozo, Domo û Tûtîno kir qêrîniyê...

Her sê ebîdê cinan, li wê derê hazir bûyîyê...

Çîçeka cinî emrî ser Tozo, Domo û Tûtino kiriyê, go: honî rahejin Mîr Mehmûdê Cindî, honê berê wî bidin bajarê Tûnis û Xedra, honî wî li tenişta bajêr deynin, mehîna wî bidin destê wî ye.

Wê gavê Tozo destê xwe li bin lingê Mîr Mehmûd xistiye, Domo rahiştiye mehîna wî ye, Tûtino xurçika zêra, di stoyê xwe de daniye, her sê ebîdên cina, bi hewa ketin, berê xwe dane ezmanê joriyê; heyanî ko ji reş ketin ji nû da, xwe ber ra ser bajarê Tûnis û Xedra dayiye, û li tenişta bajêr daniye.

Wê gavê mehîna Mîr Mehmûdê Cindî teng û ber tengê wî jê re şidandin, teslîmî wîna kiriye.

Mîr Mehmûdê Cindî mehîna xwe destkêşê xwe kiriye; hêdî, hêdî, hûrik, hûrik dimeşiya; Mîr Mehmûdê Cindî wê gavê çû bû, nêrî ko şivanek li pêşiya wî ye; silav li hazira kiri bû, li wî şivanî kiriye.

Nehrî ko ev şivan yekî kal î rîspî ye, ismê bihna dirana di devê wî tu niye.

Ev kalo, çiqas gulî û gulbaz û rêşî hemî bi ser bejna xwe de berdayî ye, Mîr Cindî gelekî bi kalo fikiriyê; go: Xwedê hebîna kalo hewala te çi ye?

Kalo go: ya xortê delal, bimeşe bi riya xwe de, îşê te ji kalo çi ye?

Mîr Mehmûd go: Xwedê hebîna kalo, tu ji mi'r bêje, bê hewala te çi ye...

Kalo wê gavê ji Mîr Cindî re gotiye, go: Kulê dilê kalo giran in, derdê dilê kalo, Sêvoka Hecî ye.

Wê gavê Mîr Cindî ji kalo re got: kalo sêv li welatê me erzan in. Dinya, gava ko Mîr Mehmûd wilo ji kalo re gotiye, kalo lê vegerand: ya Mîr Mehmûdê Cindî te ji min re digot tu ê dînî, lê ê dîn tu yî, ez ne ji sêva ra dibêjim, derdê dilê kalo bi Sêvoka Hecî re ye, Sêvoka Hecî qîzek e, dilê kalo ketiyê... va heft salê kalo qediyan, ezê li ber pezê bavê wê me, ji heştê û heta heştê, Sêvoka Hecî tê bêriyê, çavê kalo lê dikeve, bihna kalo hebkî biderdikeve.

Mîr Mehmûdê Cindî go: Xwedê hebîne kalo, ev Sêvoka Hecî qîzek ye, li kû ye, go: ev Sêvoka Hecî qîza Mîrê Tûniz û Xedra ye.

Mîr Cindî ji kalo re got: tu niha nayî ez û tu bazarekî bikin kalo go: ya xortê delal, hewala te çi ye? go: quncilê xwe bide min û ez ê xwe bidim te.

Kalo ji Mîr Mehmûd re go: çi mesele ye ko ez quncilê xwe bidim te û t' ê xwe bidî min?

Mîr Cindî go; ez li cem te bim, ez miawiniyê bi te re bikim, aliyê te şivantiyê bikim...

Mîr Cindî u kalo bazarek kiri ye, Mîr Mehmûdê Cindî kehrek ji kalo kiriye, ev kehir rabû şerje kiriye; hûrê wî ji nava wîna bi derxistiye, û hûr li serê xwe kiri ye; li cem kalo maye, aliyê wî dike şivaniyê.

Wey lo dilo.., tim lo dilo, perîşano dilo...

Wê şevê Mîr Mehmûdê Cindî li cem kalo maye, bû sibe, bi wextê bêriyê, cêriya Sêvoka Hecî hat bêriyê, Mîr Cindî rabû li vî û li wî alî, pez li ser destê cêriya Sêvoka Hecî girtiye; carekê Mîr Cindî hingûlîska Sêvoka Hecî berda binê satila şîr, bi dizîyê...

Cêriya Sêvoka Hecî, rahişt satila şîr û ber bi mal de dimeşiya,..

Satila şîr aniye, li ber Sêvoka Hecî daniye, Sêvoka Hecî satila şîr ber ra parzûn dayê, Sêvoka Hecî wisa li parzûn nêriye, nêrî ko tiştek di binê parzûn de xuyaye, lê nêrî, dît ko Hingulîska Sêvoka Hecî ye; a ko wê û Mîr Mehmûdê Cindî pev guheriye!

Tew lo dilo, tim lo dilo, perîşano dilo!... (ne qediyaye)

# PÊJINÊN DINYAYÊ

Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî



Dinya Zivistan e, Her Der Qeşa Girtiye; Waporeke Brîtanî Karê Xwe ê Didevanî û Nobetdariyê Pêk Tîne




Qiwetên Azahî û Serbestiyê. Leşkerên Rûsî Êrîşî Neyaran Dikin.

IMP. DU JOURNAL LE MIROIR D'ORIENT

Sal 2 — Hejmar —43

Duşemb — 27 Adar —1944

Kiriyariya Roja Nû; ji bona erdên Sûriye û Libnanê; 15 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê: 15 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

# KURDISTAN

—II—

*Xelk û rûniştiman :*

Li gora hejmartiyarên rastir xelkên Kurdistanê ev in :

Di Tirkyayê de 4.000.000; di Ecemistanê de 3.500.000; di Iraqê de 1.100,000; di Suriyayê de 300,000 di Sovyetistanê de 160,000; bitevayî ji bona axa Kurdistanê neh milyon.

Pir cara hin eşîrên kurd ji Kurdistanê derketine û di welatê xerîbiyê de ji xwe re gund û şaristan ava kirine, di Enedolê de, û li zehf derên Ecemistanê bi sedan ve gund û şaristanên kurdî hene, lê gava me hejmarên kurdên axa Kurdistanê kirin me ew ne hesibandine. Ji xwe di axa Bulûc û Efgana de jî, eşîrên Kurd zehf in.

*Nijad, Xwîn û Zimanê Kurdan :*

Nijadê Kurd ji koma miletên hindî-ewripayî ye ; xwîn û zimanê wan jê ne. Miletên hindî-ewripayî ne, ko çiraya xweşî û zanînê, azahî û serbestiyê vêxistine û pê dinya ronahî û kamiran bûye.

Zmanê kurdî zmanekî xwerû ye, zmanekî dewlemend, ahengdar û gelek şîrîn e. Ji erdê Sovyetistan û Iraqê pê ve, di birên welatên Kurdan ên din de, xwendegah û dibistan tu nîne; nikarî bûn bêne vekirin.

Piştî şerê mezin kurd bi xeyret û xebata xwe gelek pêş ve çûne. Bi sedan ve kitêbên kurdî hatine çap kirin û gelek kovar û rojnameyên kurdî hatine derêxistin.

Îro rojname û kovarên ko têne belav kirin ev in: Riya taze, Erîvan, Sovyetistan; Niştiman, Lehican, Îran; Gelawêj, Dengî Kitîyî-Taze Bexda, Jiyan, Sileymaniye, Iraq; Hawar, Ronahî; Şam, Sûriye; Roja Nû, Stêr, Bêrût, Libnan.

Berî şerê mezin yê 1914-1918 an xwendin û nivîsandin di nav xelkê de zehf belav ne bû bû, îro em bi çavine geş dibînin ko di gundên biçûk de jî xelk ji xwendina zmanê xwe hez dikin û kovar û rojnameyên kurdî dixwînin.

*Bawerî û Dînê Kurdan :*

Ji kurdên me ên mêrxas êzedî û ji welatiyên me mesîhiyan pê ve, piraniya kurdan misilman in, û piraniya kurdên misilman sin-nî ne.

Lê nik kurda bitevayî hêj rêç û rêzikên dînê nijadê kurd ê kevin, dînê zerdeştî têne dîtin. Ji xwe baweriya me ev e ko dînê êzediya ji kaniya Zendavesta û Zerdeştî ye.

Zerdeştî dizanin ko Xwedê yek e û ji wî pê ve tu Xuda nîne. Hîmê dînê zerdeştî ê exlaqî sisê ne : qenciyê bide eqlê xwe, qenciyê bêje, qenciyê bike. Ji av, agir, ronahî rastî, mêranî, comerdî, qencî û paqijiyê hez bike; qedrê gotin û welatê xwe, jin û zaroya bigire û bizane ko di dinyayê de rêyek heye ew jî riya rastiyê ye.

Ev binyad û qeydeyên he îro jî di nav kurdan de hêja ne û kurd qedrê wan digirin.

*Dîrok û Tarîx :*

Nivîsevanên Sumeriya şehdetiyê dikin ko kurd du hezar sal berî Isa Pêxember. di welatê xwe Kurdistanê de rûdiniştin û her û her şerî cîranên xwe Babilî, Hitîtî, û Asûriya kirine yên ko dixwestin welatê Kurdistanê bêxin bin lepê xwe ; rast e ko Kurd carna ketine bindestê cîranên xwe, lê tu cara wextekî dirêj ne mane di bin sermiyaniya wan de.

Kurda arîkariya Sîrûsî kirine û pê Nînive û Babilonyayê vegirtine Kurda Hirmizgan û ibadetgehên. zerdeştî, hikmên Zendavestayê ji tada miletên hov û kûvî parastine û bûne nobetdarên wan; şeş sed sal berî Îsa Pêxember.

Gava fermandarê yewnanî Ksenefon bi segmanên xwe ve di Kurdistanê re derbas bû, kurd ew gelek êşandine, ji her ko kurd tu cara qail ne dibûn ko şerevaniyine biyanî pê li erdê Kurdistanê bikin.

Di wextê Sasaniya de qedrê miletê kurd gelek mezin bû û wan karine hêja pêk anîne.

Siltanê mezin Selahedîn, neyarê Rişar bi dilê şêr, kurd bû û piraniya eşîrên kurdan di bin sermiyaniya wî de bûbûn yek. Sedsala sêzdehî de kurd di pêşiya eskerên mongola ên xedar û xwînxwar de bi meranî çok dane erdê û ew ji tixwîbên Kurdistanê qewirandine.

Pişka dîroka Kurdistanê a nûjen bi Siltan Selîm Yek destpê dike ; yê ko piştî xelîfetiya xwe, dixwest hemî miletên misilman bigihîne hev û bi navê misilmaniyê yekîtiya wan pêk bîne.

Bi destê Idrîsê Bitlisî, zanayekî kurd, Kurdistan bi dilê xwe ket civana miletên misilman yên ko di bin sermiyaniya Selîm I de, padîşahê Osmanliya giha bûn hev.

Li gora hevhatina miletê Kurd û Selîm I, dewleta Osmanlî tekilî kar û şixulên Kurdistanê na be, kurd di welatê xwe de aza û serbest dimînin ; lê heke dewletên xerîb dirêjî axa Osmanliya kirin, Kurd bi esker û peran têu hawara xelîfê misilmana û padîşahê Osmanliyan.

Kurd li ser wad û gotina xwe mane û ji bona mezinahiya dewleta Osmanlî hezar car û bi sed hezara hatine kuştin.

NÛ DELHÎ—Qiwetên Hevalbendan Meingwan standine, sed mîl bi nav erdê Burmayê de; 2000 kuştiyên japonî li erdê mane.

Herwekî radyoa Tokyoyê elam dide bombardimanên Hevalbendan Rabaul xistine perîşaniyeke giran. Rabaul qerargeheke japonî ye û bi bombardimanên dawîn di wê de şewatinê mezin çêbûne.

SAN—FRENSISKO— Di erdê çînî ê Bakurî de, nijdevanên çînî ên welatparêz zererine dijwar dighînin qiwetên japonî. Di axa Şantungê de nijdevanên çînî 1.425 caran dirêjî leşkerên japonî kirine.

# Ber Bi Serfiraziyê Ve

GEZAYIR— Eniya talyanî de, şerine xurt û xwîndar destpê kirxine. Bi lez an bi giranî, pêçveçûna qiwetên Hevalbendan di vê eniyê de dom dike. Bi ketina Kasînoyê deriyê. êrîşên nû di pêşiya yekîneyên Hevalbendan de vebûye.

LONDRE, Refên brîtanî û emerîkanî ev çend roj in. hêj bêtir zor didin hêjagehên elemana yên peravên Ewripa Rovayî û rê û rêhesinên ko ji axa elemana ber bi roavayî ve dirêj dibin.

MOSKÛ— Êdî tu şik nîne ko bedena Ordiyên elemanî ya berevaniyê di eniya Sovyetî de, hildiweşe. Qiwetên von Manşteynê ketine perîşniyê, şerpeze bûne û baz didin. Îro hezar roj in şerê ûris û elemana dom dike, eleman ji axa Ukranyayê jî hatine qewirandîn, dhêla nîroyî de bêmecal in, xwe bişûnda dikişînin û nikarin di peravên Dnîestrê de jî, bikevin çeper û kozikan û ji xwe re xetekeberevaniyê deynin.

Dubno ketiye, yekîneyên Ordiya Sor ber bi roavayî ve dimeşin. Jmerinka jî hatiye star din, 36.000 kuştiyên elemanî li erdê mane 13.000 hêsir ketine destê Ordiya Sor.

Niho çar deran de, çar şerine mezin çêdibin. Ber bi Dubno Lwow, Brodî ve; axa Polonyayê; Ta Dora Tarnopol Proskurov û Nintayê de dîsa axa polonyoyê de, ber bi Lwowê di peravên Dniestrê de ber bi Romanyayê ve, Di Bugê de, li erdê Dubno, Kovelê

WEŞINGTON— Qiwetên Hevalbendan ji du aliyan zor didin qiwetên japonî, li Pesifiikê û der axa Birmnyayê. Leşkerên Hevalbendan bi serdestî pê li erdê piştçeprên japona kirine û di peravên Birmanyayê de japon xistine bêgaviyê; û riya wan birîne, qiwetên ko niho di erdê Mayuyê de ne bê hêvî û perîşan mane.

NÛ-DELHÎ—Bi awakî resmî didin zanîn: duhî leşkerên Hevalbendan nevala Hukawingê ji qiwetên japona paqij kirine. Di şerên vî nevalî de 4.000 şerevaniyên japonî hatine kuştin û 1.800 mîl çargûşe erd, ketiye destê qiwetên Hevalbendan.

WEŞINGTON— Qiwetên Hevalbendan di hêla giravên Emîraliyê de, hemî niqtêyen hêja ji dijmina paqij kirine.

# Danezana Hevalhendan

LONDRE— Qerargeha Hevalbendan a mezin li Italyayê dide zanîn: Piştî bombardimanke hewayî a xurt leşkerên me bi arîkariya tangan, dirêji Kasînoyê kirine.

Di eniya Serpirê de piştî êrîşeke xurt qiwetên me du niqeteyên, navçeperan vegirtine û her çend jî dijmina bi qesda standina wan her du cihan ber—êrîşine xurt kirine, hatine paş ve zivirandin û şkênandin.

Di eniya Ordiya heşt û pêncan a bingehîn de tevdana kewte û sedmêran dom kiriye.

LONDRE—Şevê çûyî ji 1000 î bêtir bombeavêjên brîtanî ên giran bi ser axa elemana de girtine û 3.000 ton bombe berdane hêjagehan. 40 balafirên Hevalbendan venegeriyane warên xwe.

GEZAYIR— Qerargeha Hevalbendan a mezin li eniya Behra Spî dide zanîn: Di Kasînoyê de şerine no dom dikin. Refên Hevalbendan xwe zehf tev dane û duhî bitenê, 1.100 cara bi hewa ketine. Di qadên din de tiştekî girane çê ne bûye.

GEZAYIR— Di roavayê Kasînoyê de, di perça ko hêj dijmin lê ne, qirênine xurt çêdibin. Duhî eleman ji avah geheke mezin hatine derêxistin û bi şûnda avêtin, her cend jî tangên wan dikirin têkilî qiwetên Hevalbendan bibin. Bi sedan ve eleman, yên ko di nav xirbe û kavilan de belav bûbûn hatine girtin û hêsîr kirin.

LONDRE— Radyoa Helsinkiyê danezanek belav kiriye û pê elam daye ko Hikûmeta Fenlandî şertên brîsa nikare qebûl bike.

STOKHOLM—Qiwetên rûsî 165 kilomêtiran bi nav êrdê Polonyayê de, pêş ve çune.

# Sih hezar ton bombe hatine avêtin

LONDRE— Refên brîtanî 1000 ton bombe avêtine hêjagehên bajarê elemanî Frenkfurt, xesarine dijwar gihane karxane û febrîqeyên kîmya û mekîneyan.

Refên brîtanî di nav her deqîqakê de 50 ton bombe berdidan hêjagehan, çend nêçirvanên elemanî dikirin rêbiriya refên brîtanî bikin. Topên bajêr ên ber—balafir bi xurtî şixulîne, ji vê êrîşê û ji hinên din 22 balafirên Hevalbendan venegeriyane warên xwe.

Di nav heft rojên dawîn de refên Hevalbendan 30.000 ton bombe berdane bajarên elemana.

BERN— Radyoa elemanî dide zanîn, ko refên rûsî ji nû ve li payetextê Fenlandyayê Helsinkî xistine.

LONDRE— Emîraliya brîtanî dide zanîn: Heta îro gelîlcengkeştiyekê me, bi serê xwe, 77 noqavên elemanî binav kirine

LONDRE— Bi awakî resmî didin zanîn: Refên brîtanî ji bombeavêjên Muskîtosan bihevketî, li hêjagehên axa Germanistana Navîn û Nîroyî xistine û ev bê ko xesar bigehe wan.

STRANA KURDÎ

# DILBER

Lê dilberê, bejna te zirav e, taka vê farûgê, lê Xwedê dizane şîn bûye li zozanê jorî, li mêrga Devzerûgê, heger sed û sî sal ji emrê mi here, taliyê ezê serê xwe deynim, ser oxir û felekê, te keçikê, te nezanê, wî bêmal, wî gundo, fesado li min...

Lê dilberê, bejna te zirav e, taka vê çekemê, lê Xwedê zane şîn bûye, li zozanê jorî, li mêrga Şemê; heger sed û sî sal ji emrê mi here, taliyê ezê serê xwe deynim, ser oxir û felekê, tê nezanê, te ecemê, te zarokê, wî bêmal, wî gundo, fesado li min...

Keçikê digotî: gundîno, malîno, ne m'go çi ecêba hatî ser ecêbê; lê Xwedê zane, de lê, dilê mi keçikê; wele nizam, ne ji maliya, ne ji gundiya dil giran bû, berê xwe da welatê xerîbiyê... hunglîska destê mi çûye cêbê, gundîno malîno, ezê di bextê we de, me hûnê bi dû delalê dilê mi kevin, vegerînin, bela bê malê, ezê ramîsanekê bidimê; bi maliya çetin e, li gun diya tim ecêb e, wî bêmal, wî gundo, fesado li min...

Lê dilberê, ne mi go t'ê me re di ber derîkê me re, wa bi gêro î, bi qundir e lê digêro, cotê memikê mi keçikê mîna du kewê gozel, bi sariya sibehê re li paşilka mi keçikê dikin şêreşêro;

Wê gavê t'ê bê mala bavê mi keçikê, xwezîka mi wê gavê, kalê bavê mi kor ba, pîra dêka mi kher û gêj ba, wî bêmal, wî gundo, fesado li min...

Destmala destê min qelemçîtî bidim destê te mirî te egîtî. Heger Xwedê ne kir mirdadê min û te bi qîzanî, bela bikeve bişûnda, piştî çar sala bimîne li ser darê di jinbîtî, wî bêmal, wî gundo, fesado li min î...

Strancivîn: ŞÊXÊ EBDILQADIR

## GAZIND & HÊVI

Kurdistanê, ez gorî te bibim. Te dibînim tu çenda ciwan î. Tu sorgula li nav baxan, nêrgiza li nav atan î parçekî ji behiştê yî, tu hatî dinyayê. Tu ciwantira çendî û çend weltan î. Lê tu kevtî destê neyaran, bê xweyî û bê xudan î.

Lawên te hemî dirazin; ev jîne qey li wan adet e. Niştimaniya ko ez jê dibînim bi Xudê hemî rûmet e. Çîp keke xûnê narijin; ew niwa zora bi qîmet e. Ma çenda em di sax în, emê welê li bin dest û stoxwar û nezan bimînin.

Alem hemî dehwa heq û serfirazi yêt xo diken. Axayêt me genc û mal û zîva xir diken. Zanayên dinyayê di reya keşif u ixtiraan de zor diken. Melayên me kitêbkên xwe bo niviştiya vedikin.

Gelî lawan, ev jîn ji me re şerm e. An bi camêrî bijîn, an ev jîn ji me re yekcar ne gerek e.

Gelî gencan, xortên vî welatî, ji we re fîdatî û niştimanî ferz e. Divê hon Kurdistanê bi zûyatî, serfirat û bilind ken.

DILKULÊ DOSKÎ

# SEVOKA HECI

—7—

Ji kêfa Qeytana Hemedaniyê, her du ebîd ji bîra kirine, hêdîka cewab şandi bûn Mîr Mehmûdê Cindî; Qeytana Hemedanî pêş mîr Mehmûdê Cindî kiriye, go: ya Mîr Mehmûd, ev Qeytana Hemedanî miqabil çavê te ye, tu soz û misaqê, tu bi min re didî, tu ê gotina xwe bîni ciye; ezê bidim te Qeytana Hemedaniyê. Mîr Mehmûdê Cindî gava çav li Qeytana Hemedanî ketî bû gelek kêfa wî hatiyê, go: bi sozê mêre berê, heger Xwedê miradê min bikî, ezê te jî mehir bikim bi hewîtiyê;

Çîçeka Cinî êdî Qeytana Hemedanî xist destê wî yê... Mîr Mehmûdê Cindî rahişt Qeytana Hemedaniyê; hêdî, hêdî dimeşiya berê xwe da dîwanxana bavê Sêvoka Hecî, çû nêrî ko meclisa bavê wêna, ji fêris û pehlewana digeriya, silav li civata hazira kir li wana dikiriyê; çû li ber destê bavê Sêvoka Hec sekiniyê; hêdîka Qeytana Hemedanî da destê wî ye. Gava çavê bavê Sêvoka Hecî bi qeytanê ketiye, ecêbek geleki mezin diyê; bavê Sêvoka Hecî xwe li qulp û sera daniyê; meclis êdî hemî rabûn li ser piyê; ji bavê Sêvoka Hecî re gotiyê: ya Mîrê me; gotin tê ne maye. te em kirin şahid, ji bona Xwedê, ev qîz ma rizqê vî xortiyê...

Bavê Sêvoka Hecî nêrî ko rê ne ma jê derê, go: serseran û serçavan, bi vê civatê û bi vî xortiyê; qey Xwedê Teala rizqê wan tev kiri bû li ezmanê joriyê...

Êdî bavê Sêvoka Hecî şandi bû, du melê aniyê, mehra Sêvoka Hecî û Mîr Cindî, bi qewlê pêxemberê Xwedê li hev biriyê... daweta Sêvoka Hecî û Mîr Cindî qedrê heştekê li dar daniyê.. heya ko rihela «cihêza» wêna tekmîl kiriyê; aliyek ji qesra xwe ji Mîr Mehmûdê Cindî re vala kiriyê. Mîr Cindî û Sêvoka Hecî ketin wê qesrê, hev du standin, bi helaliye..

Mîr Mehmûdê Cindî ji apê xwe re gotiyê: go ya apo, ez hêvî û recê ji te dikim, tu izna min bidî, ezê berê xwe bidin bajarê bavê xwe.

Mîr Cindî kar û barê xwe kiriyê, hati bû derê bajêr sekinî nêrî ko Çîçeka Cinî li hêviya wî ye, gava hati bû silav li Çîçeka Cinî kiriyê; Çîçeka Cinî şandi bû da, sê ebîdên cina aniyê; rahiştibûn Mîr Mehmûdê Cindî û Sêvoka Hecî, tev li xişr û malê wêna hilanîne bi ezmanê hefta ketine anî bûn nîzîkî bajarê bavê wîna daniyê...

Hey lo dilo, tim lo dilo, kêfxweşo dilo...

Mîr Mehmûdê Cindî cewab şandi bû dû bavê xwe, bavê wî bi eşq û bi kêf derket pêşiya wî yê, gelekî kêfa wî ji Mîr Mehmûdê Cindî re hatiyê û dawetek mezin jê re çêkiriyê....

Mîr Mehmûdê Cindî soza xwe bi cih aniyê, piştî salekê şandi bû dû Çîçeka Ciniyê mehra xwe li Çîçeka Cinî kiriyê.....

Ew gihan miradê xwe, û em jî bigehin miradê xwe bi istiqlala Kurdistanê...

## PÊJINÊN DINYAYÊ

Xebat - Fidakari - Serfirazî - Serdestî



Bergeheke delal, şerevaniyine xort û ciwanmêr.



Ji bergehên welatê Frensê... Masîvan ji bona masîvaniyê kar û barê xwe dikin.

## QEWIL

### Qewila Şêxê Hizanê

Hay felekê, hay felekê,
Dinya li min wergeriya gemî û kelekê,
Li ber min winda dibû, çavê di belekê.
Şêx Sedîq e, bi kerb lez tê
Qebûl na ke vê huriyetê
Da'wa şêxa li serferîetê.
Çûm Bedlîsê, gelî bi gelî
Civat geriya hemû welî
Jê difiriya bû cotik welî
Xeniqandin şêx Sediq Elî.
Çûm Xeydayê, bi şan û şîn e
Miclis û urfê li hev du civiyane
Li şêx radikirine, ferman e.
Xeniqandin şêxê Hîzan e!
Çûm Bedlîsê, wiha li wê ye
Dara qetlê li devê rê ye
Şêx davêtin feleqê ye.
Şerît qetiya ji canibê Xwedê ye.
Mirwet ne ma li dinyê ye.
Dayika şêxa rabe bilezîne
Xurçika zêra bi xwe re bîne
Bik hedî ji walî re bişîne.
Şêx zaro ye, belkî ne xeniqînin.
Xeniqandin şêx Sebabedîne,
Ro di qubê felekê de dimîne
Xeniqandin, şêx seneda dîn e.

## DÛRIK

Ha Dûrik nayê, nayê
Tû keroşka li nav lemayê
Tu xezala li ber çemayê
Tajî û tola berdayê,
Ne girt û ne gihayê.
Tama memkê te xweş in
Wek xurmayê Bexdayê.
Wek fisteqê Besrayê.
Ez çiqeysî geriyam li dinyayê
Ez çû bûm Hemis û Hemayê
Û ez çûm Kerkûk û Bexdayê
Kes temtêla te nayê.
Malê dinyê hindik e
Qelenê Gewra min nayê.
Serê Gewra mi saxbe
Ez çi bikim ji malê dinyayê.

Sal 2 — Hejmar — 46

Duşemb — 1 Gulan — 1944

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 15 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê; 15 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

CENG & SIYASET

# DEWRAN

## PIRSA ME

Welatekî mezin û dewlemend, erdekî spehî û çeleng, û tê de neh milyon ciwanmêr: eve Kurdistan.

Di nav miletên Rohelatê Navîn de, nijadê ko hêj ne gihaye azahî û serbestiya xwe, em in her çend jî em ne kêmî cîranên xwe ne û xelkên ko me nas dikin vî tiştî dizanin û bi sedan ve kitêb û nivîsarên hêja, şehdetiya vê rastiyê dikin. şertê pêşveçûna miletan ê pêşînû bingehîn, azahî û serbestî ye; û tu milet bê azahî û serbestî nikare ji cihê xwe rabe û berê xwe bide warên zanîn,hiner, dewlemendî û serfiraziyê; nikare bi kêrî xwe,bi kêrî cîranên xwe û cihanê bê Carekî, nivî sevanekî emerîkanî, hati bû mala min dixwest pirsa Kurdistanê çi ye ji min seh bike. Min xalîçeyê ko li erdê bû şanî wî da û jê pirsî: tu vê xalîçeyî çawan dibînî, spehî ye?.

Wî got: gelek spehî ye, û min yê hinde spehî, hindik dîtiye.

Min gote wî: heke niho, em rabûn û ev xalîçe pênc perçe kirin tu çi dibêjî...

Go: heyf e, guneh e!..

Min lê vegerand: Te dît, tu dibêjî qusandina xalîçakî, guneh e welatê me Kurdistan, hatiye pênç perçe kirin, ma ne guneh e min bi ser ve zêde kir û got ê: ji xwe pirsa Kurdistanê çi ye, te nihû sehkir. Belê, pirsa Kurdistanê ev e, welatek hatiye par kirin, miletek hatiye perîşan kirin.

Kurd comerd, ciwanmêr, dil pak û mêrxas in. Xerabiya tu kesî ne xwestine û îro jî na xwazin, xizmet û arîkariya miletên dora xwe kirine û îro jî dikin, û heke firê sendine mezin ketin destê wan, hêj bêtir jî dê bikin.

Lê belê, kurd jî dixwazin bibin xwediyê erd û welatê xwe, û riya zanîn û hinerê de, avakirin û kokkirina cihanê de, bi kêrî xwe û dinyayê bên.

Miletê tirk, ji şah û padişahên xwe gelek aciz bûbû û ew ji welatê xwe qewirandin û miletên ko dora textê padişahên Osmanlî û xelîfeyê misilmanan de, giha bûn hev û dû, ji hev veqetiyan, her kes para xwe bir, em kurd bitenê ji vê dîwana parkirinê destvala derketin; tiştê ko li gora qeydeyên eql û şerietê, heq û edalet e, diviya bû bikeve destê me ket destên din, em da'wa vî tiştî dikin; ev e pirsa Kurdistanê.

Miletên dora me, gava em da'wa heqê xwe dikin ji me re dibêjin: em hemî misilman in, em hemî birayê hev in, di nav beyna me û we de, tu ferq nîne. Heke ev gotin rast biwa, tiştê ko dikin dîsa ne rast e; ji ber ko gava bavek dimire, zaro hemî para xwe dibin û ne tu usûl e ko brayek rabe û bi navê bratiyê heqê brayên din bixwe. Gava şirketek tête bela kirin, hisedar parên xwe dibin.

Di qala bav û bratî û dostanî û pardariyê de, isûl ev e, mîna ko me gotiye.

Heke bi zor û qiwet e, bi zilm û zorkeriyê ye; em bi çavê serê xwe dibînin; miletên dinyayê ên zorker digehin kû derê. Niho refên brîtanî û emerîkanî, hero 4.000 ton bombe davêjin, hesin û agir dibarînin erdê elemana, welatê ko bawer dikir, dikare xurtiyê li cîranên xwe bike, miletên biçûk bêxe nav lepên xwe. Ordiya Sor jî, ordiyên elemana, yên ko gihabûn heta Stelîngradê, perîşan û şerpeze kirine û ber bi sînorên Germanistanê ve dimeşe; vê Ordya Sor ko Serfermandarê wî Mareşal Stalîn e, ev çend car in dibêje: ordiyên me nobetdarê azahî û serbestiya miletan e, çi biçûk çi mezin.

Zilm, zorkerî ev dehbe ye ko, bi lepê xwe, gora xwe dikole.

Ev şer, ji nû ve pêş me kiriye ko zilm sêwî ye, tiştê ko bikare payedar bibe heq û edalet e, insaf û însaniyet e. Tiştê ko bi qiwetê şûr hatiye çêkirin, bi qiwetê şûrekî din, têtê xira kirin. Dawiya neheqiyê nîne; riya wê kurt e, dawiya wî perîşani ye.

Yê ko xwedî heq in, di nîzingî Xwedê de ne. Xwedê bi wan re ye.

# BER BI SERFIRAZIYE VE

LONDRE— Bombeavêjên brîtanî di pêşiya peravên Holendayê de, ji nû ve, dirêjî waporên elemanî kirine; sê waporan derb xwarine. Yek şewitiye û xesarine dijwar gihaye didoyên mayîn.

LONDRE— Di rohelatê Stanislawowê de, êrîşên elemanî ên xurt hatine paş ve birin. General von Manşteyin bi qesda parastina Çiya yên Kerpatê, devê deriyê Ewripayê, cehda xwe a paşîn dike. Di nav 24 saetên dawîn de, qiwetên elemanî 15 cara êrîş kirine. Li gora gotina elemana, eskerên mecarî jî têkilî van êrîşan bûne. General Martîn, di rojnama Deylî- Telegraf de, dibêje ko eleman ji Yugoslavya, Ewistirya, Norvecistan, û Denîmarkayê esker kişandine û anîne eniya rûsî; jê pê ve firqeya elemanî a zirhkirî 10, di dora Lwowê de ye. Eleman dizanin ko şerê Lwowê, ji bona wan zehf girane ye, lê ji hindikahiya qiwetan, nikarin, qiwetine mezin, bişînin vê qada şerî.

STOKHOLM— Hikumeta fenlandî brersîva xwe şiyandiye Moskovayê.

# ÇAR HEZAR TON BOMBE

LONDRE— Bi awakî resmî didin zanîn: şevê çûyî ji hezarî bêtir balafirên brîtanî dirêjî rêhesinên dora Parîsê, û Ruenê û hêjagehên Berlîn û derên Germanistana Roavayî ên din kirine û lêdane. 14 balafir, venegeriyane warên xwe.

Balafirên brîtanî di vê navê de 4.000 ton bombe avêtine van hêjagehan.

LONDRE— 750 bombeavêjên giran ji tîpê Kelehên Firok Liberatorsan, di penaha 1.250 nêçîrvanan de, êrîşî karxeneyên elemana yên balafiran, û destgeh û febrîqeyên elemana ên mezin î din, kirine bi awakî gelek xurt lêxistine.

MOSKÛ— Şerê Qrimê ber bi xelaska xwe ve diçe. Bi sedan ve neskerên eleman û rûmanî yên ko xwe kişandi bûn peravên Qrimê ên nîroyî, ji serê zinarên ko hikmî Balaklavayê dikin, hatine avêtin behrê.

Di hêla hêj roavatir de, eskerine din dikirin siwarê gemiyan bibin, yên ko tejî bûn, lê ew ketine avê û tê de fetisîne, Şaristanê Sebastopolê xerabezarek e ko dişewite û ji aliyê behr, hewa û reşayiyê dora wê hatiye girtin.

# DI CENGE SEBASTOPOLE DE

MOSKÛ—Leşkerên rûsî ji bona êrîşa asêgeha Malakofê—ya Sebastopolê—xwe Fêk tînin, di şerên sala 1855—an û yên 1942.—an de xuyabû bû ko ev asêgeh mifteya Sebastopolê ye.

WEŞINGTON—Ji sala 1941-î û heta îro Emerîkayê 21.000 belafir, 21.000 tang, 1.400 ceng keştî, 500.000 kemyon, û bi milyonan ton pola,û ma'denên din dane Hevalbendan.

TEHRAN—Serekên eşîrekî çar casûsên Mihwerê girtine û teslîmî qiwetên Brîtanya Mezin kirine.

MOSKÛ—Qiwetên sovyetî 2 waporên neyara, her du pev re 2.000 ton mezin bin av kirine û 10 belafirên barkêş avêtine erdê.

NÛ-YORK—Di Japonyayê de, şêwir û mişawirên giran têne danîn; li gora raporên ko hatine Japonyayê, eleman ne biqasî gotinan xurtin, û zora elemana, beriya wextê ko têtê bawer kirin, wê biçe.

LONDRE—Piştî ko serekwezîrên erdên kişwerê Brîtanî, di Londrê de, civanê xwe danîn, wezîrê Berîtanya Mezin ê Yekemîn Mr. Çorçil di pêşiya Civatmiletî de, qala pirsa siyaseta dervekariyê wê bike.

MOSKÛ— Şevê çûyî refên sovyetî dirêjî Lwowê kirine û lêxistine.

LONDRE— Kaniyên Mihwerê digotin ko serekdewletên brîtanî, sovyetî û emerîkanî civanekî deynin: Royter dide zanîn ko ev nûçe ne rast e.

BERLIN— Danezana elemanî dibêje ko yekîneyên Ordiya Sor bi xurtî êrîşî Sebastapolê dikin.

# QEWIL

Qewilê Şêx Ebdilhelîm

Hey dinyayê, hey fenayê
Ka mamûrê xeyra li ser tekyayê
Dinya pûç e, bikêr nayê
Kanî Adem ka diya me Hewayê
Ka nebî Mihemed, bavê Fatimayê,
Kanî baba, kanî dayê!
Ka melayê Quran li ber,
Ka alimê xudanê secer,
Kanî xortê kêm xeber,
Dinya ne ma ji bo pêxember.
Rabe, rabe kamilo rabe
Bênîş giran e, daket ser kabê.
Çûm Ehmediyê, şiklê şamê
Hûr û nûr barî, misla xunavê;
Di dû çavê te şêxî re
Mi tu şêx navê,
Mi hewî na be.
Tekya şêxê min ça bilind e
Lê dişuxilî, şemal û find e
Sêxê min di qelpê merevê mu'min de;
Mi bi qurbana Hecî Helîm e
Sêxê min, ferxê şahê li Mêrdîn e
Imdad, meded qutbê kamil.

# REWIŞA ŞERI

LONDRE— Di eniya rûsî de pirsa Qrimê, bi paqijkirina vê erdê ji dijmina û ketina Sebestopolê, ya ko karê rojek an didiwaye ber bi qedandinê ye. Ordiya Sor ji aliyê din, ji bona êrîşine nû, di axa Meceristan û Romanyayê de, xwe pêk tîne û li gora nûçeyên dawîn, eskerên rûsî yên serbestbûyî, ji Qrimê têne rêkirin eniya ko ber bi axa mecerî û rûmanî ve dirêj dibe. Di Ewripa Roavayî de, bombardimanên hewayî bi awakî ecêb giran dom dikin u dijwartir dibin. Duhî 4.000 bombeavêj û nêçîrvan têklî êrîşên axa Germanistan, Frense û Belçîkayê bune.

Di eniya Birmanyayê de, japona qesda xwe ne birine serî û leşkerên Hevalbendan di vê eniyê de, êrîşên japona sekinandine û li zehf deran pêş ve meşiyane.

LONDRE—Bi vegirtina axa Qrimê, bê şik ketina Sebastopolê jî, îşê roj û saetan e. Ordiya Sor ji nû ve, berê xwe dide eniya Rûmanî; armanca êrîşên nu ava Tunayê û kaniyên gazê yên Ploestiyê ye.

WEŞINGTON—Noqavên emerîkanî di Pasifikê de, ji nû ve, 15 waporên japonî bin av kirine.

LONDRE—Nûçegihayê rojnama Deylî Telegraf ji Zurixê dide zanîn, hawîrên elemanî yên Berlînê bawer dikin ko êrîşa erdê ewripayê, her wekî hewa xweş e, dikare her dem destpê bike;û her wekî der eniya rûsî rewişa eskerî giran e, li Berlînê zehf hisabê vî tiştî dikin.

MOSKÛ—Leşkerên elemanî di Sebastopolê de bi çavsoriyeke ecêb şer dikin û dixwazin pê birek ji eskerên elemanî ko Sebastopolê de ne, bikarin xwe jê xelas bikin.

LONDRE—Refên Marodersan, yên ordiya emerîkanî 9-duhî piştî nîro di Frensa Bakurî de ji hêjagehan xistine; spitfeyersan ev bombe avêj, di hemandin.

2ème ANNEE — LUNDI 1 MAI 1944 — NUMERO 46

# LE JOUR NOUVEAU

QUOTIDIEN KURDE

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 15 P.L.S. - Abonnement Syrie-Liban 15 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## KURDISTAN

*Le Kurdistan et le Moyen-Orient*

Le Kurdistan forme l'épine dorsale du Moyen-Orient.

Il comprend une grande partie des montagnes qui s'étendent de la Mer Noire, à proximité du Caucase, jusqu'au Golfe Persique aussi bien que des plaines fertiles à l'Ouest.

Le Kurdistan est habité par un seul peuple : les Kurdes. C'est une race d'hommes courageux et travailleurs, qui compte plus de huit millions d'âmes. La loyauté, la tolérence, et l'amour de la liberté sont au nombre de leurs plus chères traditions. Depuis l'aube des temps historiques, les Kurdes ont poursuivi leur existence nationale dans leur pays.

Les Kurdes sont distincts de leurs voisins par la race, la langue, et la culture. Ils séparent entre eux les Turcs, à l'Ouest, les Russes, au Nord Est, les Perses à l'Est, et les Arabes, au Sud.

Le Kurdistan qui constitue, à n'en pas douter, une harmonieuse entité géographique, économique et nationale, est inévitablement appelé à jouer un rôle important dans le Moyen-Orient de l'avenir. Il faudrait lui permettre, étant donné sa position stratégique clef entre l'Ouest et l'Est, de devenir une Communauté autonome et, par suite, un facteur politique stable, au lieu d'en faire un carrefour d'intérêts en conflits, ainsi qu'il en est présentement.

En effet, la réaction des Kurdes, là où ils forment de puissantes minorités, aux mesures visant à une assimilation contrainte, a prouvé que tout effort de ce côté pour une solution du problème kurde est voué à l'échec.

Pour les états intéressés ce peut être une certaine perte de prestige que d'admettre qu'ils sont incapables d'absorber la Nation Kurde. Mais il n'y aurait qu'avantage pour ces nations à s'engager dans une voie qui menerait à la transformation d'une minorité gênante en un voisin bienveillant.

*Limites Ethnographiques*

*A L'OUEST* : Une ligne partant du Kurd-Dagh (Syrie) et traversant en direction du Nord les régions de Killis, Marache, Albistan et Divrik jusqu'à la rivière Kelkit.

Au Sud-Ouest de cette ligne, on trouve des groupes kurdes dispersés qui se sont établis jusqu'au Golfe d'Alexandrette.

*AU NORD.* : Une ligne suivant la rivière Kelkit et traversant à l'Est les villes de Baybourt et Olty jusqu'à Kars.

Au Nord de cette ligne, des centres kurdes éparpillés atteignent la Mer Noire près de Trébizonde.

*A L'EST.* : Une ligne partant de Kars dans une direction Sud-Est et longeant ensuite la rive Ouest du Lac Ourmia, le Louristan et la région des Bakhtiares jusqu'à Sehneh et Kermanchah.

*AU SUD.* : Du Louristan du Sud, une ligne traversant du Nord au Sud Khanakin et Kifri, jusqu'au Djebel Hamrin et de là, vers l'Ouest, au Sud du Mont Sindjar jusqu'à l'Euphrate près de Djérablous.

*Limites politiques*

Avant la première guerre mondiale, le Kurdistan était partagé entre la Turquie et la Perse, avec en outre une petite communauté kurde en Russie. La Conférence de la Paix et les différents traités avec la Turquie, l'Iran, l'Iraq et la Russie aboutirent au partage du Kurdistan entre ces pays. On ne trouve en Russie que 160.000 Kurdes ; ils jouissent avec l'appui efficace du gouvernement d'une entière liberté culturelle.

La bande Sud du Kurdistan Occidental turc fut rattachée au Mandat Français de Syrie.

« La frontière turco iraquienne brisa en deux le coeur du Kurdistan historique. Elle annihila pour de nombreuses générations toutes possibilités d'évolution des tribus kurdes en tant que nationalité » (Encyclopedia Britannica, 14 th Edition, Art. Mossoul).

*Géographie physique et ressources naturelles*

Le Kurdistan est surtout un pays de montagnes, mais il compte aussi des plaines et des vallées larges et fertiles. Tel est le cas des plaines de Diarbekir, Passen, Mouche, Kharpout et Djézireh, ainsi que les vallées du Tigre et de l'Euphrate et de leurs affluents.

Le Kurdistan est, en premier lieu, un pays agricole ; il produit toutes sortes de céréales, du lin, du tabac, de l'huile de sésame, toutes sortes de légumes, des amandes, des figues, des noix, des pommes, des poires, des abricots, des pêches, des prunes, des cerises, du raisin, des grenades, des mûres, des olives, etc.

Le pays est riche en bétail et les pâturages sont bons.

Les ressources minérales ont été peu exploitées, exception faite du cuivre près de Diarbekir et du pétrole dans le Kurdistan du Sud. Il s'y trouve en grandes quantités du fer, de l'étain, du charbon, du soufre, du plomb et de l'argent.

Il y a quelques fabriques de textiles et l'industrie domestique est très répandue : Tissage (laine, lin, soie), tapis, travail du cuir, de l'argent, des outils (fer, acier, cuivre).

On y fait un grand commerce d'exportation de laine, de poil de chèvres, de noix de galle, de soie, de poissons fumés et salés, de fromage, de beurre, de peaux, et de bétail.

*Les villes*

Environ vingt villes comptent de 30 à 50.000 habitants. Les plus importantes sont :

*EN TURQUIE* : Diarbekir, Mardine, Kharpout, Malatia, Erzeroum, Erzingan, Mouche, Van, Bitlis, Khozat.

*EN IRAN* : Saouc' eboulagh, Sakiz Senné, Kirmanchah.

*EN IRAQ* : Suleimanieh, Kirkuk, Zakho, Rawandouz, Keuisandjak, Arbil, Imadieh.

*Population*

Aucun essai digne de foi n'a été fait par les Gouvernements tant Turcs qu'Iraniens pour arriver à un recensement exact de leurs sujets Kurdes. Toutes les informations publiées par eux à ce sujet réflètent leurs tendances à minimiser le problème kurde. Les chiffres que nous donnons ci-dessous, constituent une approximation prudente : En Turquie 3.800.000 ; en Iran 3.000.000 ; en Iraq 1.000.000 ; en Syrie 250.000 ; en Russie 160.000 ; soit au total pour le Kurdistan 8.210.000

Exception faite de petits groupes mélangés dans les régions limitrophes, la population est homogène et ne compte que des minorités : numériquement faibles.

Il faut noter qu'au cours des siècles les Kurdes ont entretenu de bonnes relations avec leurs voisins chrétiens, et qu'ils ont étroitement coopéré avec eux dans la résistance aux oppresseurs. Par suite de déportations effectuées sur une grande échelle, on trouve de grandes colonies kurdes en dehors du Kurdistan, au coeur de la Turquie par exemple. Nous n'en avons pas tenu compte dans notre évaluation.

*Race et langue*

Les Kurdes appartiennent par la race et par la langue au groupe indo-européen. Tous les efforts, tentés récemment par les états intéressés pour leur imposer leurs langues respectives ont échoué. Même dans les villes, les Kurdes continuent à parler leur langue.

En Iraq et en Syrie, l'activité culturelle kurde n'est pas interdite. Dans ces pays et en Russie paraissent plusieurs publications kurdes.

*Religion*

A l'exception des chrétiens et d'un petit groupe qui a conservé un dérivé de la vieille religion de Zoroastre (les Yezidis) les Kurdes sont des musulmans appartenant généralement à la secte sunnite. Mais ils restent pénétrés des vieux principes humanitaires de leur ancienne croyance zoroastrienne, laquelle a laissé chez eux de nombreuses traces. Ils sont tolérants et, de ce point de vue, très différents de leurs autres voisins musulmans.

Les états intéressés exigent l'assimilation des Kurdes en se fondant sur l'argument d'une similitude de religion. Cependant, le courant prédominant actuellement dans ces pays est un nationalisme outrancier et leur effort pour assimiler les Kurdes s'accentue avec la croissance de leurs tendances chauvines,

*Histoire*

Il ressort de documents sumériens que, dans des temps aussi reculés que deux mille ans avant J. C. des tribus kurdes occupèrent le coeur du Kurdistan. Guerroyant sans cesse contre leurs puissants voisins babyloniens, hittites et assyriens, ils ne se soumirent pendant longtemps à aucun conquérant. Ils aidèrent Cyrus à conquérir Ninive et Babylone. Sous l'empire achéménide Perse, ils jouirent de privilèges et se virent confier la garde des temples de Zoroastre. Xénophon, au cours de sa retraite, se heurta à la violente opposition des Kurdes. Ils résistèrent avec succès aux Séleucides. Les Kurdes jouèrent un rôle important sous les Sassanides. Plus tard eut lieu l'invasion des hordes tartars et turques qui couvrit le pays de ruines. Saladin le Grand, le chevaleresque adversaire de Richard Coeur de Lion était un kurde qui unifia la plupart des tribus kurdes sous sa loi. Au treizième siècle encore, les Kurdes résistèrent avec succès au envahisseurs mongols.

L'histoire moderne débute par l'occupation du Kurdistan par le Sultan Sélim 1er, le premier Khalife Ottoman, qui entreprend ainsi la réalisation de sa politique panislamique. Aidé par l'historien kurde Idrissé Bidlissi, Sélim obtint la coopération des principautés kurdes dans sa guerre victorieuses contre les Perses. Cette coopération prit ensuite un caractère permanent par un accord aux termes duquel les princes kurdes reconnaissaient la suzeraineté du Sultan tout en gardant leurs droits souverains à l'intérieur du pays. Dès lors, les Kurdes participèrent en loyaux vassaux à toutes les guerres du Sultan.

Mais l'évolution de la Turquie, d'une confédération de régions soumises à une autorité ottomane en un Etat National, eut une répercussion fatale sur les relations turco-kurdes. Une violation progressive des droits kurdes, dirigée d'abord contre les princes et ensuite, de plus en plus, contre la nation kurde toute entière, à été la cause d'un conflit qui dure encore aujourd'hui.

La première phase de ce conflit à savoir : la destruction des principautés kurdes souveraines, dura jusqu'en 1847. Cette date marque la fin de la dernière principauté kurde qui tomba après

avoir rèsisté pendant 15 ans aux armées turques. De violentes révoltes éclatèrent en 1879, en 1889 et en 1913.

Après la révolution Jeune Turque les Turques ont accentué leurs efforts en vue soit d'assimiler, soit de détruire la nation kurde.

La nouvelle politique trouve son expression dans des mesures inconnues jusqu'alors ; en Turquie, la complète interdiction de l'emploi de la langue kurde et les déportations à grande échelle aboutirent à trois insurrections, en 1925-26, en 1930 et en 1937-38. Elles prirent une ampleur telle que les Turcs furent obligés d'avoir recours à des corps d'armée entiers et à l'aviation.

*L'Attitude Internationale*

La Grande Guerre 1914-1918 fut une période particulièrement dure en Turquie, non seulement pour les Kurdes, qui périrent en masse au cours des déportations, mais aussi pour d'autres minorités qui furent littèralement anéanties.

Les puissances alliées à la Conférence de la Paix étaient parfaitement conscientes de ce qu'une solution au problème kurde devait être trouvée et la Nation Kurde fut représentée à cette conférence par un délégué, le Général Chérif Pacha.

*Le traité de Sèvres*

Par le Traité de Sèvres, qui fut signé le 10 Août 1920, les Grandes Puissances et la Turquie reconnaissaient les droits fondamentaux de la Nation Kurde (Traité de Sèvres, Section III, Kurdistan, art. 62, 63, 64). L'article 64 reconnait aux Kurdes le droit de former une nation et celui d'unifier les différentes parties du Kurdistan.

Mais ces articles du Traité de Sèvres n'ont jamais été appliqués.

En effet, les Grandes Puissances ratifièrent par le Traité de Lausanne, le coup de force Kémaliste. Un monde indifèrent laissa le Kurdistan morcelé, proie offerte aûx ambitions nationalistes des états intéressés.

*Situation présente et à venir*

La pression continuelle et toujours croissante exercée sur les Kurdes, durant les vingt dernières années, dans l'intention de les supprimer en tant que nation, a abouti à un échec total.

Le seul résultat des efforts tentés pour se débarrasser d'une des plus anciennes nations du monde a été de répandre la misère et la désolation.

A l'issue de la présente guerre mondiale, aucune des nations victorieuses ne pourra rester indifférente à l'élablissement d'une paix durable dans le Moyen-Orient. Mais une telle paix ne pourra être obtenue tant qu'une nation, forte et tenace, placée à l'un des points stratégiques les plus importants du monde, demeurera la proie de puissances destructrices, la cause ou le prétexte de conflagrations futures.

Il est difficile de prévoir le stade final auquel mènera la restauration de la Nation Kurde. Mais la première étape de cette restauration ne pourra offrir moins que la réaffirmation de droits qui furent déjà définis, il y a vingt ans, dans le Traité de Sèvres. Les Grandes Puissances démocratiques n'ont pas réussi, après la dernière guerre, à empêcher que leurs efforts pour restaurer les kurdes dans leurs droits ne soient balayés par la force brutale et par les intrigues politiques. Ce sont de semblables échecs qui ont obligés les Alliés à reprendre les armes pour la cause de la justice. Et c'est pour en éviter le retour qu'il faut que réparation soit faite à une des plus flagrantes injustices de l'histoire par la restitution au Peuple Kurde de sa place parmi les nations libres.

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞTIYÊ

## CENG & BIHINGEH





Brayên me êzedî bi mêrxasî û ciwanmêriya xwe nav û deng dane.

# PIRA SEHIRDAR

— 2 —

Qadî di şibakê re nerî, ko çel xulam li ber derî ne ; go : baş e, emê bikirin. Pîrê her çel xort, firot qadî û miftî û ji wan re got : ne ma çavê min bardibe: ko ez di berwan re, dakevim herim. derîkî din tune, ezê têre herim.

Qadî derîkî dî jê re vekir û pîrê çû mala xwe.

Qadî ban xorta kir û ji wan re got : hon çi karî dikarin bikin, go ez we bişînim gundê di xwe. Xorta li hev û du nêrin, û ji hev re gotin : te çi ji me ye ? Qadî ji wan re got : mi hon kirîne.

Xortan jê re got : te em ji kê kirî ne ; em hatine cem te şerîetê.

Qadî go : min hon ji pîrê kirîne. Go : pîrê le fenek di xwe li me kir û li te jî kir, qantirê di me birin û em firotin te.

Qadî pir qehirî, tiştê ko pîrê tê kir, go : herin lawên min, malê di xwe, ev îşê min ma, ezê heyfa xwe û a we ji pîrê hilînim ; ewan xortan ji wî bazarî derketin, û ji bezê çûn heya gundê di xwe û ko li me heram be, em tu carî ne ma tên vî bajarî.

Qadî karê wî li pîrê digere, di ziqakek teng de, rastî pîrê hat û jê re got : îcar tu ji destê mi xelas na bî, bi destê pîrê girt û bi dû xwe kişand ; heya mala xwe û bir ; kîsek anî û pîrê xist vî kîsî û devê kîs girêda û ban hemalekî xwediyê qantirkê kir û jê re got : vî Kîsî bavêje behrê, u mecîdik da xwediyê qantirê.

Xwediyê qantirê ev kîs bar kir li ser qantira xwe û bi rê de ji xwe re got : ev kîs hêja ye mecîdîkê, ma çima ezê bavêjim behrê, ê ko di hindurê wî de ye, ezê vala kim, bavêjim behrê û kîs ji xwe re bînim, bifiroşim. Giha ber behrê, kîs vala kir, nêrî ko pîrek jê diket.

Pîrê çavê xwe vekir, û eşheda xwe anî û ji xwediyê qantirê re got : her mizgîniyê bibe ji lawê min qadî re, bê diya te rahet bû elhcmdi lil-lah, wê xelatek mezin, wê bi de te.

Xwediyê qantirê, beziya û hat cem qadî, û ban kir qadî, go : mizgîniya min li te, diya te rahet bû.

Qadî fehim kir û jê re got ; mizgîniya min li te, qantira te çû. Mi ji te re got :bavê behrê, tu hatiyî mizgîniyê didî min.

Xwediyê qantirê vegeriya ber behrê, nêrî ko qantira wî çûye.

Pîrê hat mala xwe û mesela xwe hemî ji şeytên re got, şeytên xwe jê diweşand, go: ez nikarim wek te bikim, Xwedê min bi agirê te ne şewitîne.

# DEMA NIHA

LONDRE—Refine brîtanî ên xurt, ji bombeavêjên giran bihevketî, dirêjî axa Germanistanê kirine û li bajarên Mûnix û Karlsruheyê xistine.

Xesarine dijwar gihane wan her du şaristanên elemanî. 30 belafirên brîtanî venegeriyane warên xwe.

LONDRE—Danezaneke resmî elam dide: bombeavêjên emerîkanî ên giran balafirgehên Nansî, Metz û Dîjonê dane ber bomban; refine nêçîrvana ên xurt ev bombeavêj dihemandin.

LONDRE Wezareta brîtanî a hewayî dide zanîn: Şevê çuyî, bombeavêjên brîtanî, 500.000 bombe avêtine hêjagehên axa elemana.

LONDRE—Qerargeha emerîkanî a mezin dide zanîn: bombeavêjên Liberators û Mûstangs duhî piştî nîro li kar û barên Pa de-Kalayê ên eskerî xistine.

MOSKÛ—Êrîşa Sebastopolê a dawîn ber bi destpêkirinê ye. Topçiyên sovyetî asêgeha Sebastopolê bê etlahî bombardiman dikin, û peyadeyên Ordiya Sor ji nû ve pêş ve ketine.

MOSKÛ—Li gora rojnama Trud, elemana dest bi vala kirina bajarê Konstanzayê kirine; bendera rûmanî a mezin ya ko 200 mîl roavayê Odesayê de ye.

BERLÎN—Danezana elemanî dide zanîn ko yekîneyên Ordiya Sor, bi xurtî zor didin Sebastopolê, û êrîşên wan, ji nû ve destpê kiriye. Li gora vê danezanê karê parastinê pêk tê. Danezana elemanî jê pê ve, dibêje ko yekîneyên Ordiya Sor di Karpat û Dniestra Jorjîn de, bi xurtî ber êrîşan dikin.

WEŞINGTON—Leşkerên emerîkanî di giravên Marşalê de, Atolê Vjelang standiye.

NÛ-YORK— ji 1ê adarê sala 1941 î û heta 1- adarê sala 1943. yan emerîkaniyan 20.000 balafir û 25.000 tang dane Hevalbendan, li ser qanûna qerd û kirê bike. Ji aliyê din, emerîka 598. 718. 657 livre, zad û zexîre rêkirine erdên Hevalbendan. Ji wan zad û zexîran sedî de 45 çûne Brîtanya Mezin, sedî de 45 Rûsyayê û ên mayîn Yewnanistan, erdên Efrîqa Bakurî û Efrîqa Roavayî a frennsizî.

# QEMERZEMAN

Li Kurdistanê, di bajarê Zimzimanê de hakimek hebû, navê wî Seîd bû.

Emrê wî pir dijwar bû, xelk jê ditirsiyan. Rokê ji rojên Xwedê miclisa wî geriya bû. Sê sihirbendên wî hebûn ji wan re got: îro honê ji mi re binêrin, çi li dinyayê qewimiye, çi ne qewimiye?

Her sê remildar, remlê xwe avêtine û bi hewakî nerîn. Ji wan re beyan bû. Yekî ji wan got: go ya hakimê min îsal dinya xezeb bariya ye, dinya zehmet e.

Ê din got: go ya hakimê min, îsal wê xwîn biherike, xelk dê bê ne kuştin.

Ê sisiya deftera xwe girt, û tiştek ne got.

Hakim jê re got: tu çima tiştekî na bêjî?

Go: ê min, tiştek mi ne dîye!

Go: na be, t'ê bêjî, tiştê ko te dî.

Remildar go: ê hakimê min, di remla min de bûye, çi zaroyên ko îsal bibin, wê yek ji wan te bikuje.

Hakim go: ev tiştekî hêsanîye; ezê emir bidim ser bajêr, heçî zaroyên ko îsal bibin, heker keçik be, ew efû ye, heker kurik be, ezê wî bikujim.

Emir da bajêr, heçî pîrekê wan bi hemil be, bela bê xwe qeyid bike.

Roja ko ji wan re bibe, hikûmet zarokên wan ji wan bistîne, û bikuje.

Zilamek hebû bi emir mezin bû û jina wî wek wî mezin bû, emrê wî heftê sal bû, zaro ne dî bûn, di wê salê de Xwedê lawik dayê.

Kesî nizanî bû ko lawik ji wan re bûye. Diya wî û bavê wî dan e girî, û getin ya rebî, heya niha me zaro ne dîn, îsal vê sala xerab, Xwedê ev lawik daye me, heger em bibin ji hakim re, wê bikuje, û heke em ne bin, wê xelkê jê'r bêjin wê me bikuje û wî jî bikuje; a qenc emê bibin nevala şêra bela şêr wîna bixwin, çêtir e.

Bavê wîna rahiştiyê û bi şev birin nevala şêra; danî û hate mal.

Şêrekê mê hebû, şeş çêliyên wê şêrê hene; sibehê ji kula xwe derket û nerî, pêçekek insana heye, zarokek têde digirî.

Çû li ser sekinî û pêsîra xwe xist devê wî; û ji çêlikên xwe re got: hon li dora min bin, ko tu şêrî din, ne yê vî kurikî ne xwe.

Ewê şêrê ew kurik xwedî kir heft salan, lawik mezin bû di nav wan de, êvarê bi wan re diçe kula wan û sibehê bi wan re diçe çolê.

Nêçîrvanek hebû rojekê çû nevala şêra, ji xwe re seydê bike. Sibehê carekê dî ko şêr ji kula xwe derketin, lawikek di nav wan de ye. Ma ecêbmayî, ji xwe re go: ma ez xewn dibînin an rast e. Çiqa lê mêzand, nêrî ko lawik e, însan e!

Êvarê hat miclisa hakim Seîd û got: ya hakimê min, îro min, ecêbekdî Hakim jê re got: go çi ecêbe, bêje! Go: ya hakimê min; dît, lawikek di nav şêra de.

Hakim jê re got: tu derewa dikî. Sibehê ezê esker bi te re bişînim, heger rast e, ezê xelata te bidime te û heker derew e, ezê te hebis bikim.

Go: baş e, mîna tu bixwazî.

Adinê rojê, hakim esker pê re şand nevala şêran, dîtin ko raste şeş şêr û diya wan û lawikek di nav wan de.

Yekî ji wan eskeran xeber ji hakim re anî.

Hakim ji wan re got: go êvarê wextê ko şêr herin kula xwe, hongirekî li ber kula wan dadin, wê dû here hundiro, wê şêr birevin, honê lêwik bigirin û bînin.

Ewana wilo kirin, lawik anîn cem hakim, lê nerî got: ev lawik tiştkî ecêb e, ko em berdayî bihêlin wê xelkê edem bikin; lazim em wîna têxin odakê û em xwarina wî jê re bişînin, nobetçîkî li ber deynin, ji bona ko wî bielimînin ştexaliyê.

Xistin odê, nobetçîk li ber danîn, alem lê difericin?

Navê wî danîn Şêr.

Lawê hakim heye, navê wî Qemerzeman e. Sibehê dadikevî ko herê xwendegahî, dît ko xelk li ber oda Şêr di fericin, çû cem wan ge: ev çi ye hon lê difericin.

Go: ma tu nizanî bê ev çi ye? go: ez nizanim.

Go: bavê te lawikek ji nevala şêra anîye; em lê difericin. Go: navê wî çi ye?

Go: navê wî şêr e.

Qemerzeman ji nobetçî re go: derî veke, ezê herime cem.

Nobetçî jê re got: go ez nikarim, derî ji te r' vekim, wê bavê te bixeyide; here izna xwe ji bavê xwe bixwaz, û were.

Qemerzeman çû nik bavê xwe jê re got:

Ya bo, ezê herim cem Şêr; ez û wîna emê ji xwe re xeber bidin

Bavê wî jê re got:

Tu nikarî herî cem Şêr, lawike. mitwehiş e, ez ditirsim, wê te bikuje; û lawê min ji te pê ve tuneye

Qemerzeman jê re got: go lawik min na kuje, û ezê ewîna bielimînim xeberdanê

Bavê wî jê re got: here.

Çû ba Şêr, hev du maçî kirin, û li cem hev rûniştin, û xwest ko xwarinê ji wan re bînin.

Xwarin ji wan re anîn, xwarin û xwest cila jê re bînin, anîn; lê kirin û wan li cem hev; sê şeva û sê roja man.

Miclisa hakim jê re got: wê lawê te xwendina xwe ji bîra bike, lazim tu mielimekî bînî, bela her duha bielimîne.

Hakim go: baş e.

Mamosteyek anîn ji wan re, her duha dielimîn e.

Di vê kêfê de man deh salan; qenc elimîne dersa xwe; û aqilê xwe nas kirine.

Piştî deh salan Şêr ji Qemerzeman re got:

Ya brayê delal, here cem bavê me, izna me jê bixwaz, emê herine çarçiyê, ji xwe re kêfkê biguherin, hinik bigerin û emê bên.

Qemerzeman çû nik bavê xwe, destê wî maçî kir û jê re got:

Ez dixwazim izna me bidî me, emê derkevin ji xwe re bigerin.

Bavê wîna jê re got:

Go tu, tuê bibî kefîlê wî lawikî, ko li kesî nexe, here.

Lawik jê re got: ez kefîlê wî, li kesî na xe.

Çûn, ji xwe re geriyan heya êvarê.

Adinê rojê ji xwe re her yekî hespekî peyda kir û çûn nêçîrê.

Di wê kêfê de man çend rojekê.

— Ne qedyaye —

# PÊJINÊN DINYAYÊ

## Xebat - Fidakari - Serfirazî - Serdestî





Ji bergehên axa Kurdistanê; Îbadetgehên brayên me ên eyzedî.

MOSKÛ—Leşkerên sovyetî di nîro—roavayê Narvayê de, êrîşên tang û peyadeyên elemana bi şûnda zivirandine.

LONDRE—Di eniya Birmanyayê de, yekîneyên Ordiya Çardehan, xwe gihandine leşkerên Hevalbendan yên ko di Kohimayê de, şerê japona dikin. Di nevala Magaugê de, firqeya çîna 38 an a General Stilwell gihaye ava Lankrawê. Di tevayiya eniyan de, refên brîtanî zor didin japona; kar û barên gazê yên Wenangaungê derbine giran xwarine, depoxaneyek ber hewa bûye. Çekê brîtanî ê hewayî, jê pê ve, li Mandelayê xistine.

ENQERE—Lebatên civatmiletê tirkî duhî ji xwe re civanekî veşartî danîne. Têtê bawer kirin ko di vî civanî de, qala rêkirina xromê Germistanê, hatiye kirin.

ENQERE—Bi awakî resmî didin zanin: ko ji îro û pêde tirk xroma naşînin elemana.

Sal 2 — Hejmar —47

Duşemb — 8 Gulan —1944

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 15 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê; 15 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## CENG & SIYASET

# DEWRAN

— 1 —

### Mîna ko em Dixwazin

Kurd dipirsin, gelo halê me wê çewan bibe, didawiya vî şerî de em jî bigehin miradê xwe, em jî bibin xwedî dewlet û hikûmet, zaroyên me wê bikarin herin dibistan û xwendegahên kurdî, û tê de hînî zmanê xwe ê şêrîn bibin. Gelo ew wê bikarin bibin xwenda û zana û mîna zaroyên miletên dinyayê ên din; bi arîkariya zanîn û hinerên nû û nûjen, serfiraz û bikêrhatî; gelo mehkemeyên kurdî dê çêbibin, kitêb, kovar û rojnameyên kurdî di nav bajar û şaristanên kurdî de, dê bêne belav kirin, firotin; ala me ji nû ve dê bête daçikandin ser serê qesr û avahiyan, ordiyên Kurdistanê wê hebin; heke carekî din şerek çêbû, emê bikarin mîna miletên hevalbend ên mezin û biçûk, ji bona azahî û serbestiya welat û cihanê, xwîna xwe birejînin, û bibin miletek ji yên nobetdarê silh û aştî û xweşî û rahetiya dinyayê?.

Belê kurd wan tiştan dipirsin. Cewaba vê pirsê ev e: em çilo dixwazin, Kurdistan wilo çêbibe; jê ne bêtir û ne jî kêmtir.

Qencî an xerabiya Kurdistanê di destê me de ye; erê ne di destê tu kesî de ye. Azahî û serbestiya me, bi himet û xebata me çêdibe, ne bi destê tu kesî.

Emê girara ko çêdikin bixwin; heke me pir xwê xistiyê, girar şor bibe, heke me bala xwe ne da, wê bişewite.

Dewletên Ewripayê ên heval bend tevde, çi biçûk, çi mezin û Emerîka, bi fidakariyine mezin, gihane dereca xwe a îro, î bilind û hêja û bi kitêb, xwendegah, kovar û rojnameyan; riya xebatê pêş me kirine; ev in hoste û mamosteyên me ên hinerwer û qedirgiran.

Kaniya zanîn û sinhetê, bi destê wan vebûye; çira û roniya xweşî û insaniyetê wan vêxistiye.

Îro jî, di riya heq û edalet û azahî û serbestiya dinyayê de, ew xwîna xwe direjînin, ji bona qenciya cihanê her fidakariyê dikin.

Divê em, mîna zaroyên aqil, zaroyên ko ji mela û mamosteyên xwe hez dikin, û qedrê wan digirin, li wan binêrin; û ji wan bielimin, mîna wan bikin, ji xwe çiqas xweş e ko di nav beyna me û wan de mirovatî heye; em jî mîna wan arî ne, zimanê me û wan ji kaniyek e, û ko sibe em jî elimîne û em jî bi xebata xwe pêş ve ketine, emê bibin mîna wan, eqil û dilê me, dê bibe mîna wan, exlaq û pakiya wicdanê me, dê bibe weke wan, bi xebata xwe, bi xeyret û xisletên xwe ên guzîde, di welatê rohelatê navîn de, wê bibin şewq û ronahiyek, mîna welatek ji yên Ewripayê; herwekî ewripayiyên hêja gotine: mîna Swîçreya Asyaya Nîzing.

Niho, emê bidin eqlê xwe, gelo miletên Ewripayê bi xwe çawan gihane serbestî û azabiya xwe û çawan zehf miletên dinyayê, ji nezaniyê xelas kirine û gihandine, mertebeyine bilind, devê deriyê xweşî û kamiraniyê. Berî her tiştî divê emê bi hemî qiwetên xwe bixebitin da ko xelkê me, ji qe neve hînî xwendina zimanê xwe bibin û bikarin kitêb, kovar û rojnameyên xwe bixwînin û karê welatê xwe xweş nas bikin; bê ko xelk îşê welatê xwe bizanin, nikarin bikêrî wî bên.

Ji aliyê din, divê dinyayê bi pirsa Kurdistanê bihese; da' wa Kurdistanê xweş bizane.

Heke xelkê me bi tevayî û bi isûl û rêz û rêzikan, da'wa welêt seh kirin û ji cihanê re jî dane seh kirin, ev ji bona heyîn û hebûn û pêşiya me karekî zehf hêja û qîmetdar e.

Piştî şerê mezin î kevin, riya xelasê di pêşiya me de, vebû bû, lê me nizanî bû, îşê welatê xwe pêş ve bajon.

Bê şik ji bona azahî û serbestiyê xwîn têtê rijandin. Lê heke miletek bi tevayî, îşê welatê xwe nas ne kir, ev xwîna ko hatiye rijandin, bê feyde diçe, û milet, bê ko tiştekî hêja bêxe destê xwe, dikeve perîşaniyê.

# BER BI SERFIRAZIYÊ VE

LONDRE— Refên brîtanî û emerîkanî bi şev û bi ro, dirêjî hêjagehên axa elemana, erdên vegirtî û yên Romanya û Mecaristanê dikin.

Duhî 2.000 belafirên Hevalbendan di ser erdê Frensa vegirtî re firiyane û li balafirgehên elemana ko di vî erdî de hatine danîn, û rê û rêhesinan xistine.

250 Kelehên Firok û 500 nêçîrvan têkilî êrîşa yekemîn bûne, di êrîşa diwemîn de 300 Liberators di penaha nêçîrvanên Spîtfeyir û Then derbolstan de, zor dane hêjagehên neyaran.

LONDRE— Êdî, eleman qail in ko di nav van rojan de, eniya diwemîn dê vebe, û qiwetên Hevalbendan ên mezin êrîşî erdê Ewripayê bikin. Ji aliyê din eleman cengkeştiyên xwe xistine derên ko li gora wan, Hevalbend pê li erdê Ewripayê bikin.

## LI ENIYA SOVYETÎ

LONDRE— Di eniya rûsî de, şerine mezin hêj destpê ne kirine, her çend jî eleman dibêjin ko di Jasiyê de, qirênine zor û xwîndar, çêdibin.

Serfermandariya sovyetî qiwetine mezin û taze tîne qada şerî û têtê bawer kirin ko êrîşa rûsî a nû, û eniya diwemîn di gavekê de çêbibe; bi vî awayî tiştê ko generalên elemanî, jê ditirsiyan, wê çêbibe; şer di du eniyan de. Heta îro, eleman ji tirsa êrîşa Hevalbendan, erdê Ewripayê, 60 firqe esker û bihezaran top û tangên xwe li Ewripa Roavayî hiştî bûn. Lê niho dema êrîşa mezin nêzing dibe û agir ji du aliyan dora ordiyên elemana bigire.

LONDRE— Civanê serekwezîrên erdê Kişwerê Brîtanî, yên Ewistralya, Nû— zelanda, Kenada, Efrîqa Nîroyî û Rodezya Nîroyî di bin serekiya wezîrê Brîtanya Mêzin ê yekemîn, Mr. Çorçîl de, dom dike.

MOSKÛ— Leşkerên sovyetî di erdê Çekoslovakyayê de, li palên çiyayên Kerpatê şerê elemana dikin; û yekîneyên sovyetî di nîro—ro helatê Stanislavê de, du aségeh standine, û hêsîr girtine.

Stokholm— Li gora nûçeyên ko ji Moskovayê tên, di eniya rûsî a navîn de, şerine mezin, ber bi destpêkirinê ne.

BERN—Danezana rûmanî dibêje: di eniya rohelêt de, rewişa eskerî ne guheriye.

WEŞINGTON— Wezareta emerîkanî a behrî dide zanîn: noqavên emerîkanî di Pesifîkê de, 12 gemiyên japonî binav kirine, tê de qirwa zoreke sivik, 2 destriyor, banzîn kêşeke mezin, waporeke gir a arîkariyê, 2 gemiyên eskerkêş, 5 waporên barkêş hene.

Ji despêka şerî û heta îro, noqavên emerîkanî 695 waporên japonî xeriqandine an şkênandine.

## GOTARA WEZIRÊ DERVEKARIYÊ M. IDIN

LONDRE. — Wezîrê brîtanî ê dervekariyê Mr. Îdin, di pêşiya Civatmiletê Brîtanî de, elam daye ko Brîtanya Mezin û Spanya li hev hatine û êdî Spanya ji ma'dena wolframê—eleman ji bona çêkirina çek û posatan gelek hewcedarî vê ma'denê ne — hindik dê bişîne ele mana, û hin waporên ko di benderên Spanyayê de ne, serbest bihêle.

Firqeya spanî Heşîn, ya ko di eniya sovyetî de bû, hatiye bi şûnda kişandin û vegeriyaye Spanyayê. Êdî Brîtanya Mezin û Emerîka, ji nû ve, pêtrol bişînin Spanyayê. Mr. Îdin gava qala vê lihev hatinê dikir, dilxweşiya xwe elamam da.

LONDRE. — Li gora nûçeyên dawîn Ordiyên Yugoslavî yên xelasiya welêt niho di erdê Ewistiryayê de şerê dijmina dikin; û wan Koruskayê de, qiweteke elemanî perîşan kirine. Yugoslava ji aliyê din didin zanîn ko di axa Istriyê de û li dora Triesteyê jî, êrîşeke Yugoslavî; û di Mekidonyayê de jî, êrîşeke eleman—bilxarî şkênandine...

# ŞIN

### Hecî Derwêşê Hecî Mûsa

Serekê Ezîzan, apê me î delal û hêja, Hecî Derwêşê Hecî Mûsa, çû rehmetê.

Rehmetî, di sala 1870 de, li gundê xwe Qeremanê, hatiye dinyê; hêj, xort û ciwan dihate pêş cavan; mirovekî jîr, merd, ciwanmerd, bi aqil, dîndar, hazircewab û gelekî dilbirehim bû.

Di sala 1918 de, gelekî nan, xwarin da alemê û feqîr û belengazan.

Di wê salê de, li her aliyên dinyayê, genim, ceh û her tiştên xwarinê buha bûbûn.

Di wê sala giran û buha de olçek genim, bi çar zêrên zer di hate firotin.

Gelek axa û dewlemenda berê xwe ji xelkê feqîr û belengazan guharti bûn, konên xwe di nepen diyan û cihên dûr de vegirti bûn.

Ewî konê xwe, li berya Mêrdînê, li navrokê Evdu- Selamê vegirti bû; rojê pê de, 100 — 150 nefsî, li mala wî nan dixwarin; derê konê wî, bi şev û roj vekirî bû; qedrê xerîb û ciwamêran, gelekî digirt; pir xerîbdost bû.

Rehmetî, gelek sarî û germiyên dinyayê, derbas kiri bû. Di sala 1912 û 1914 de, li Edirnê û li eniya Romêliyê û li ya Qefqasyê, û di deşta Pasînê de, di şerên Belqan û; ê Mezin de xerb kiri bû.

Di eşîra Kîkan de, ew zabitê qebîla xwe Ezîzan bû; û di sala 1906 de, ji bona te'mîna esayiş, emniyet û parastina riya Hicazê, ji « Reşikên Ereban » bi Ibrahîm Paşa e milî re, çû bû, gihaştî bû Şamê; ji bona ko biçiwa Medîna Munewer, di vê gavê de, Siltan Ebdilhemîd, ji textê xwe ket û Reşad rabû ser text; « Huriyet » serbestî îlan bû, derbal fermana Ibrahîm Paşa rabû, ji şamê heya Wêranşarê bû şer piştî vî şerî, rehmetî vegeriya mala xwe.

Berê van tiştên tarîxî û dîrokî di sala 1895 de, di şerên Brahîm Paşa û Faris— el— Cerba û Hadiyê kurê Asî û di şerê Kîkan û Husênê Qenco de jî, şer kiri bû.

Di sala 1890 de, di dest pêka teşkîlata alayên Hemîdiyê de, ew bû bû zabit, di eskeriyê de, rutba wî milazimê ewil bû; di destê wî de, ji Wezareta şerî morkirî kaxezên resmî jî hebûn.

Di şerê Belqana de, li Stanbolê li pêş wezîrê şerî û li pêş, hecî mirovên mezin, ji wî pê ve kes ne diaxivî.

Di sala 1926 de, piştî ko qomandan Tirya hate Cizîrê, di sulhê eşîrên Kîkan û Milan de, rolekî mezin lîsti bû.

Tirya gelekî ji wî hez û ew teqdîr kiri bû.

Ji her du eşîran, gelek axa û serek hebûn; di vê silhê de, Tirya ji wî pir memnûn û dilxweş ma bû; ji axayên din dilgir l t... ew

# DEMA NIHA

WEŞINGTON — Rojnama rûsî Pravda dinivîse : Wext e ko di Ewripa Roavayî de êrîşa mezin destpê bike. Ingilistan û Emerîkayê de delêletin girane hene ko kar û barên eskerî ên mezin pêk tên, lê hazir kirina her tiştî, hewcedarî wextek e.

WEŞINGTON— Stola emerîkanî ji nû ve li ser girava Trukê de girtiye, der Behra Pesifîkê, û hêjagehên vê erdê daye ber agirê xwe, Zirehpûş, qriwazor, belafir hilgir, destriyor û cengkeştiyên emerîkanî ên din têkilî vê êrîşê bûne, 126 belafirên japonî hatine avêtin erdê. Bombeavêjên emerîkanî ji girava Wêkê daye ber bomban.

NÛ—DELHÎ — Li gora nûçeyên dawîn qiwetên japonî di bakurê Honanê de pêş ve dikevin: li nîro û nîro roavayê Sang-Sayê de ji, ew ber ve hatine.

MELBURN— Leşkerên ewistralî yên ko ev çend rojin Madang û Aleksishafen vegirtî bûn, niho ber bi hindurê ve dimeşin. Qiwetên emerîkanî jî, yên ko pê li erdê Holandiyayê kirî bûn pêş ve tên. Heta niha di Holandyayê de 700 japonî hatine kuştin.

WEŞINGTON — M. Stetinus ji Londrê hatiye erdên Efrîqa Bakurî.

## 33 TON BOMBE

LONDRE — Meha borî refên brîtanî 33.000 ton bombe avêtine hêjagehên axa elemana û yên erdên vegirtî.

LONDRE — General Mek Lêan, zabitê girêdanê li ba gerargeha Mereşal Tîto, bi kardariya yugoslavî ve, vegeriyaye Londrê.

WEŞINGTON — Noqavên emerîkanî di behrên Rohelatê Dûr de 12 gemiyên japonî binav kirine.

MOSKÛ — Qiwetên sovyetî 160 kemyon û girgirok 6 deboxaneyên banzînê, trêncke eskerî ji 50 wagonan bihevketî xira kirine.

Di Behra Reş de, refên sor bi ser qeflewaporekê de girtinc ya ko berê xwe da bû peravên Romanyayê. Gemiyeke dijmin a parastina peravan, du barkêş û waporekê 800 ton mezin hatine xeriqandin.

STANBOL — ...efîrê japona li Romayê hatiye Enqerê; ev diçe welatê xwe, têtê gotin ko yekî din dê bikeve şûna wî.

## ŞIN

—2—

ra wan tiştekî eqlî û mentiqî nîşan ne didan; di îşê silhê de, gelekî bi eksî peyivî bûn.

Di sala 1939 de, generalekî firansizî hate Derbêsiyê, di îstiqbala wî de, bi hezaran xelk civiya bûn di rohilatê bajêr de, li pêş wî, bî navê eşîran, gotareke kin, lê hêja wî da.

Wî, di gotara xwe de got: em bi dil û canê xwe serfiraziya he vaibendan dixwazin, di xizmeta wan de, her gav em hazir in.

Di zemanê Hukûmeta mandatêr de, welatê me ava bû; ji xeta «rêhesinê» û heta çiyayê Evdilezîzê tev de, bûye gund û abadan; di tu wexta de, ev qas emniyet ne keti bû wî erdî, ev welat daim cihê xeziw û talana bû; emniyet û avayî lê tune bû, îro bi saya Hukûmetê, bi hezaran gund ava bûne; Frense diya huriyet û serbestiyê ye; serbes tî ji Frensayê li dinyayê, belav bû ye. H. p.

General jê re spas kir, xelkê li çepilkan xistin.

Di sala 1937 de, di hadisa Amûdê de, ne ew biwa, li Derbasiyê, wiqûatine mezin, wê çêbibiwa. Ji xwe, berî mesela hadisa Amûdê xelkê digot; ko li Derbêsiyê tiştekî mezin dê çêbibe.

Spas ji Xwedê re, bi himeta reh metiyê Hecî Dewreş, tiştek çênebû; bi eqil û tedbîren xwe ên hekîma ne li xelkê şîret kir.

Ji Cenevê, ji Civata Miletan, ji Komîta Mandan, ji wî re mektûbek hat, tê de, te yîda wî dihate kirin.

Bi rastî bavê Smaîl û Sulêman ne stêlên bu; Xwedê rehma xwe lê bike.

Amûde: Gir- Dêwan— Elemdar

## DE LO LO

Ez bi çiyayê Kurdaşî ketim, li derê Wanê ;
Ez bala xwe didimê ezmana, tê gurê gurê teyara, û erdê têyî den gê topa û mîtralyoza û cebilxana.

Şêx Mehmûd sê denga ban kirî, Kerîmê Fetah beg:

Ji milê dijmina, destê xwe bavêj ser darê canbêzara û mêr bin mêrxas bin, dest hilînin.

Bi ser me dihat, misteşarê Kerkûkê, û Silêmaniyê.

De lo lo, Şêxê min, şade şihûdê şêx Mehmûd, şêxê zirav, bavê Letîf, kekê şêx Qadir gelek hene...

Şerekî giran diqewimî, li çiyayê Kurdaşî, wa li ber e.

Ordiya nizama ingilîz giran e, bi top û cebilxana ve, kişiya ye û hatiye ser e.

Gelik şahid û şihûdê şêx Mehmûd, kekê şêx Qadir, bavê Letîf hene. Bi sê denga ban dikirî Kerîmê Fetah beg, bi gelî eşîrê Kurdistanê ve. Bavê min mêrê çê bin û çê bixebitin.

Qayişê tifinga li destê xwe bi gerînin, çavê xwe bidin ber nîşanê. Ez hewar dikim, hewara kurdên Tirkistanê dûr in û kurdên dora me xain in.

Şerekî giran diqewimî li çiyayê Kurdaşî, li derê malê.

Hespê şêx Mehmûd, kekê şêx Qadir, bavê Letîf.

Îro sê roj in dikeve pîkolê, şêx Mehmûd ban dikir Selîmê Fetah begî, bavê min o mêrê çê bin, zorê bidin ordiya ingilîz.

Îro sê roj in şerê me di beriyê de xweş bûye,

Bila roja çara têkeve kolanê aliyê çolê

Ez xiyal û bala xwe didimê, li hewa xweş tê vir—rênê teyara, pelqînê mîtralyoza.

Li erdan xweş tê qajeqaja nobetdaran...

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## HINIK BIHAR & BIHIN















Kofî, Xeftan, Cil û Delaliya Dot û jinên Ewripayê.

MOSKÛ — Serfermandariya sovyetî duhî êvarê danezana jêrîn balav kiriye: di tevayiya eniyên şerî de rewişa eskerî bi awakî hêja ne guheriye.

Li 1 — ê gulanê, qiwetên me 20 tang û 36 balafirên elemanî xira kirine. Şêva dî refên me ên dûrger gehîneka rêhesinan a Lwowê dane ber agirê xwe; zehf trênan derbine dijwar xwarine; cih bi cih agir bi vê erdê ketiye û 30 şewat çêbûye, 7 şewatên mezin; du û pêtiyên wan şewatan 2.000 mêtir bilind dibûn; 12 teqandinine giran çêbûne. Mekîneyên me bi tevayî vegeriyane warê xwe.

2ème ANNÉES — LUNDI 8 MAI 1944 — NUMERO 47

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél. : 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire : EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 15 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 15 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## KURDISTAN

La Question d'Orient — qui pendant longtemps, a été simplement la Question de l'Empire Ottoman — ne pourra être considérée comme résolue tant que se posera la Question Kurde. Les négociateurs des traités de paix, après la guerre 14-18, avaient-ils donc oublié les Kurdes? Nullement. Le Traité de Sèvres, au chapitre Kurdistan, dans les articles 62, 63 et 64, prévoit la création d'un Kurdistan uni et autonome. Les signataires turcs du Traité, renonçant à tous droits et titres sur les territoires à population kurde, admettaient le principe de l'indépendance kurde. Aux termes de ce Traité, l'union des Kurdes du Sud et du Nord devait être réalisée.

Mais, après la victoire kémaliste sur les Grecs, à la faveur de la lassitude des Alliés, le plan de création d'un Kurdistan a été remplacé par des combinaisons politiques, imposées par la force, qui, méconnaissant le droit des Kurdes à bénéficier des principes wilsoniens, partageaient leur territoire entre plusieurs états.

La Turquie conservait la partie du Kurdistan comprise dans les anciens vilayets d'Ourfa, de Malatya, de Kharpout, d'Erzeroum, de Van, de Bitlis, de Dyarbékir, de Hakkari, contenant une population kurde qui, aujourd'hui, peut être estimée à plus de quatre millions.

La Perse gardait la province qui porte le nom de Kurdistan celles de Kirmanchahan, du Louristan, du Pochté Kouh et le pays Bakhtiyar, avec une population de trois millions et demi de Kurdes.

L'Iraq recevait tout le territoire de Mossoul et de Kirkouk et le pays qui, loin au delà de Souleimaniye, s'étend jusqu'aux confins du Kurdistan du Sud, avec une population de plus d'un million de Kurdes.

La Syrie, avec la Djezíré, le Kurd Dagh et la région à l'Est de l'Euphrate, se voyait attribuer un territoire habité par environ 250.000 Kurdes.

Enfin, l'URSS gardait dans ses frontières un petit groupement kurde, environ 160.000 âmes.

On voit donc que, situé en plein coeur de l'Asie Mineure, le Bloc Kurde occupe la plus grande partie de la région montagneuse qui s'étend entre la Mer Noire et les steppes de Mésopotamie, d'une part, l'Anti-Taurus et le plateau iranien, de l'autre.

Le partage du Kurdistan a créé, dans plusieurs des états qui en bénéficiaient, de puissants groupes minoritaires kurdes. La Question Kurde, loin d'être liquidée, s'est multipliée.

Le sort de ces minorités n'était pas partout le même. En Syrie et en Irak, sous la protection des Puissances Mandataires française et britannique, et en URSS, certaines possibilités de développement culturel et économique leur était laissées. Le cas était tout autre en Turquie et en Perse, où des régimes d'oppression s'efforçaient en vain de supprimer la question kurde par l'assimilation forcée, les déportations et les massacres.

Mais les échos des révoltes kurdes de 1925, 1926, 1930 et 1937 révélaient au monde que la Turquie, malgré le démembrement de l'Empire Ottoman, n'était pas devenue un pays à population turque homogène. De même, des révoltes en Perse et en Irak rappelaient que la question kurde attendait encore sa solution. Les problèmes intérieurs soulevés par les minorités kurdes devenaient le principal souci de ces états qui, dans le Traité de Saadabad, s'entendaient sur les mesures à prendre pour étouffer tout mouvement national kurde.

Pour illustrer le vrai caractère des mesures de répression dont furent l'objet les Kurdes, remarquons qu'il s'agissait, presque toujours, d'interdire aux Kurdes l'exercice de leurs droits les plus élémentaires, celui d'avoir leurs écoles, celui de parler leur langue celui de chanter leurs chansons. Certes, les aspirations kurdes ont souvent été présentées sous un autre jour : d'après les Turcs, les Kurdes «rebelles» étaient opposés à tout progrès et combattaient les mesures visant à leur apporter le bien-être ; il leur déplaisait de voir introduire chez eux un ordre nouveau qui mettrait fin à leur genre de vie brutal. Pourtant, les Turcs se rendaient parfaitement compte du vrai caractère de la lutte. Après la révolte de 1925-26, au cours de laquelle les patriotes Kurdes tinrent longtemps en échec de nombreux corps d'armée turcs, le tribunal spécial turc qui siégeait à Dyarbékir et qui a condamné à mort 800 Kurdes (parmi eux de nombreux intellectuels), disait dans son jugement : « Certains d'entre vous ont pris pour prétexte de révolte, les abus administratifs du gouvernement, d'autres ont invoqué la défense du caliphat, mais, vous tous, vous n'aviez qu'une seule idée, celle de créer un Kurdistan indépendant. Vous le payerez de votre vie.»

En 1930, pendant la révolte de l'Ararat, le député turc Yakoub Kadri, un écrivain connu, signait un article où on pouvait lire : « Ce que signifient les flamme rouges de ces batailles, ce n'est pas la fin, mais le commencement d'une lutte entre deux races : la race kurde, que les Européens considèrent comme étant des Aryens comme eux et la race turque qu'ils considèrent comme des Mongols. « Dans un journal turc de la même époque, on pouvait voir un dessin représentant un tombeau placé au sommet du Mont Ararat, portant l'inscription : « Ci-gît l'illusion de l'indépendance kurde ».

Non, il ne s'agissait pas d'une lutte des Kurdes contre le progrès et le bien-être. Il ne pouvait non plus être question, pour les massacreurs des Arméniens, de réprimer la brutalité des rudes montagnards kurdes : On peut lire, à la page 47 du rapport sur la dispute au sujet du Vilayet de Mossoul de la Commission de la Ligue des Nations : « Nous avons pu établir le fait que, de tous les peuples musulmans, ce sont les Kurdes qui entretiennent avec les Chrétiens les relations les plus amicales ».

En Perse, où le gouvernement ne disposait pas de moyens militaires aussi puissants que ceux des Turcs, on attirait les chefs kurdes hors de leur territoire, soit par des invitations personnelles du Chah, soit par des promesses d'amnistie ; ensuite on les jetait en prison ou on les tuait.

La liste des souffrances des Kurdes, au cours des deux dernières décades, est longue. Elle illustre le paroxisme d'une politique traditionnelle des Empires Ottoman et Persan. Il peut sembler paradoxal que ce soit à notre époque que les Kurdes aient du subir les persécutions les plus brutales de leur histoire. Mais l'explication est simple : Dans un monde qui, en théorie, après la guerre 14-18, reconnaissait les droits nationaux des peuples, après le Traité de Sèvres qui avait ranimé la conscience nationale kurde, les Turcs et les Persans n'ont pas trouvé d'autre solution à la Question Kurde que celle qui consistait à faire une dernière tentative pour la supprimer, tentative brutale et désespérée que seuls le courage et la tenacité kurdes ont pu mettre en échec.

La guerre actuelle a mis en oeuvre un faisceau de forces sans précédent dans l'histoire, unies dans le désir de faire régner la justice dans le monde. Le régime d'injustice et l'appareil militaire formidable de l'Allemagne hitlérienne ont suscité la réaction du Monde Libre. Mais la justice est une et indivisible. Les crimes commis à l'égard des Chinois et des Ethiopiens étaient à la racine de la série d'abus qui a abouti au conflit actuel. Le monde de demain ne permettra pas que des foyers d'injustice subsistent, où que ce soit ; il n'oubliera pas la Question Kurde, et il ne se laissera pas intimider, comme en 1922. Tous les voisins des Kurdes ont leurs foyers nationaux : les Turcs, les Arabes, les Persans, les Arméniens les Kurdes auront le leur. Et il est difficile de prétendre qu'en otant les territoires kurdes aux états qui se partagent le Kurdistan, on dérangera un ordre bien établi. Ces états sont en pleine évolution; ce sera leur rendre un grand service que de les débarrasser de leurs plus fortes minorités et de leur permettre de se consacrer à leur progrès culturel, social et économique, au lieu de songer à s'assimiler par la force des éléments irréductiblement étrangers.

Le Kurdistan est riche. Ces richesses, dans un Kurdistan morcelé, restent en friche : Quel est le gouvernement qui se soucie du développement d'une province ou couve perpétuellement la révolte ?

Le Bloc Kurde, habité par une population homogène, deviendra un élément de stabilité et une source de prospérité pour le Moyen-Orient. Les richesses agricoles du Kurdistan sont connues ; paysan incomparable, le Kurde devenu libre donnera toute sa mesure. Les richesses du sous-sol kurde sont moins connues, quoi que certaines de celles-ci, notemment le pétrole, soient exploitées sans que le monde se rende compte qu'il s'agit d'une richesse kurde dont le peuple kurde ne profite pas. Mais il faut le dire : Les fameux puits de pétrole de Kirkouk (Irak), de Kirmanchah (Perse), les gisements de Siirt (Turquie) sont situés en territoire kurde et font partie du patrimoine national kurde. Les Kurdes désirent mettre leur pays en valeur, le monde entier en béneficiera ; mais il est inadmissible que les richesses kurdes soient exploitées sans que le peuple kurde ait son mot à dire.

Lorsque, après l'autre guerre la Question Kurde a été posée aux signataires du Traité de Sèvres, ils y ont répondu par la création d'un Kurdistan indépendant. Malheureusement, alors, les conclusions théoriques des organisateurs de la paix ont été mises en échec par l'emploi de la force. L'état d'esprit des Nations Unies, dans le conflit actuel, offre de toutes autres perspectives. S'inspirant des leçons du passé, les traités de paix ne seront pas le résultat de marchandages et ils ne seront pas modifiés par des coups de forces. La capitulation sans conditions des forces d'oppression : c'est sous ce signe que se règleront toutes les questions internationales. La justice sera étayée par la force. Sans ambiguité, les nations-Unies ont annoncé leur intention de faire respecter les droits nationaux de tous les peuples.

La politique libérale des Français et des Anglais dans les parties du Kurdistan qui se trouvaient sous leur mandat, les traditions du peuple américain, la présence, aux négociations interalliées d'après-guerre, d'un gigantesque facteur nouveau, l'URSS — apôtre de l'autonomie nationale des peuples —, sont autant de garanties d'une solution définitive de la Question Kurde, par la création d'un Kurdistan indépendant.

STRANA KURDÎ

# WAY LO

Way lo, way lo, ma'qulo romî axa o romî!

Mi dî tavê dabû ser Xêlokê Diwanzde rima tav hilatin, kula Şamê tu ê bi kul bî,

Têkevî mala qeymeqamê Ko pê Ehmedê Berazî.

Çawîş û cenderimê vê xelatê Çawa bi dû bavê Ferîd, xaçerêka Wanê kirine ta'qîbê ta'qîbatê...

Axayê mi wia na be, ma'qulê mi, wia na be;

Îrada ko li ezmanê jorîn hati be nivîsandin, li erda betal na be!...

Heta fesadiya me kirmanca hebe,

Kes ji ma'qulan û ji axeleran li ser rûkê dinyayê xelas na be...

Şerekî dibû di geliyê Kêsê, li Axpînê.

Izet tu ê bavê xalê xwe, tu ê destê xwe bavê heqibê. Tu ê ji xalê xwe re bînî dorbînî.

Ezê geliyê Kêsê ji terese romî bikim qesabxana gola xwi nê

Axa o wia nabe, ma'qulo wia na be.

Îrada ko li ezmanê jorîn hati be nivîsandin, li erdê betal na be!

# QEMERZEMAN

— 2 —

Rokê ji hev re gotin: emê îro li mal bin, qonaxê bavê me mezin in, emê bifericin ji xwe re. Ji xwe re digerin di qonaxê bavê xwe de, li daira, li oda, dîwanxana digerin, heyanî ko aciz bûn; Gihane Odakê du kursî di wê Odê de bûn; her yekî li ser kursîkê rûniştin.

Pişta xwe dan dîwêr, li miqabilên xwe nêrîn sûretê qîzekê, bi dîwêr ve ye. Hişê Qemerzeman çû dinyakê din. Dilê wî êşiya. Şêr wiha lê nêrî, ko Qemerzeman li teniştа wî ketiye, Şêr ji xwe re got: wê bavê mi ji mi re wê bêje te kuştiyê lawê min! Rahiştiyê, û av li ser çavê wî kir û jê re got: çi bi te hatiye; nikarî biştxile.

Piştî saetekê hişê wî hate serê wî û jê re got:

Ma tu na nêrî, li vê sûreta ha, ko bi dîwêr ve ye.

Şêr jê re go: ev çi sûret e?

Go: sûretê qîzekê ye.

Sûret anîn ba xwe û lê nerîn, ko li bin sûret nivîsandiye navê qîzikê Gulî Pemba ye, kêçka hakimê Sîsibanê ye. Şêr jê re got:

Tu zanî emê çi bikin, sibehê emê herin nêçîrê, emê bedlek cilê zêde, her yekî ji xwe re bibin, xurcikê xwe tije pera bikin û emê herin.

Li riya xwe, emê xezalekê an kêvroşkekê bikujin, xwîna wê li wan cilên zêde xînin, biçirînin, bavêjin ser Bîra Şêra, wê ehlê me bi dû me de bên, li me bigerin, wê van cila bibînin, wê ji xwe re bêjin, şêra ew xwarine; û emê herin bi dinyayê de; heyanî ko em vê qizikê neyînin, xwediya sûret, em nayin.

Qemerzeman go: ê baş e, raya te xweş e.

Sibehê rabûn, wilo kirin û bi dinyayê de çûn.

Piştî sê rojan, ehlê wan li wan geriyan, çûn ser Bîra Şêra û dîtin cilê wan li wê derê, çiriyane; û gotin: Şêra ev zaro xwarine.

Qemerzeman û Şêr bi dinyayê de çûn; du meha geriyan, gihan bajarê Sîsibanê.

Çûn mala pîrekê feqîr û ixtiyar bûne mêvan.

Ji pîrê re gotin; êvara te bi xêr! tu mêvana na hewînî?

Pîrê ji wan re got: mala min piçûk e, tiştkî min tune, ne hon têde razin û ne tiştekî ko hon bi xwin, ma ezê çawa we bihewînim.

Qemerzeman destê xwe xiste bêrîka xwe, kulmek zêr derxist da pîrê go: îşev emê li mala te razên.

Gava pîrê çav bi zêra ketiye, û got lawo mala min, mala mêvana ye, lê rûyê salê reş be.

Pîrê çû du bedil lihêf anîn û xwarin ji wan re çêkir; xwarina xwe xwarin gotin pîrê: sur bi te re heye an tune ye?

Pîrê ji wan re got: sura min wek behrê ye.

Jê re gotin: em hatine Gulî Pemba; emê çewan xwe bigehînin?

Pîrê ji wan re got: ji roja Gulî Pemba çêbûye, ez wêna xwedî dikim, diya xwe nas na ke, mi nas dike.

Belê îro heftik «heft roj» ez jê xeyidî me, ji bona xatirê we ezê sibehê herim cem wêna; û îşalle, we bigihînim hev.

Sibehê pîrê çû çarçiyê ji xwe re çarçefek kirî, şimikek kirî, he bik hene anî mal, hena xwe li porê xwe danî, çerçefa xwe li xwe kir, xwe pir temiz kir, qesda mala Gulî Pemba kir; gihaşt ber deriyê wan, nobetcî li ber deriyê wan hene; ne hiştin ko pîrê here cem keçik.

Pîrê ji wan re got: ev çi ecêb e, ko hon na hêlin, ezê herim cem keçka xwe.

Li dengê wê keçikê ji jor bi hîst, ban wana kir go: bela bêt.

Keçikê jê re got:

Ya pîrê çima tu ji min xeyidî ye.

Pîrê jê re got:

Ez ji te ne xeyidî me, belê îro heft roj, du lawê me hebûn, îsal bîst salê wan winda bû bûn, ne xuya bûn, hatin; û destê min ji wan ne dibû, îro ez vala bûme, ez hatim cem te.

Keçikê jê re got:

Ya pîra delal, ev çend salê te, tu li cem min î, te rojekê ji min re ne got lawê min hene, îro çi ye tu bi fena hatiyê, tu dibêjî lawê min hene.

Ez zanim meqseda te çi ye! rast ji mi re bêje, bê ev çi kesik in, li cem te.

Pîrê jê re got:

Du xort in, lawê hakiman e. yek jê re dibên Qemerzeman û yek jê re dibêjin Şêr; ji welatê xwe hatine ji bona te.

Keçikê jê re got: baş e, mi qebûl kir, belê tu zanî, ko çi qeyse xelk, hakim û axe tên min dixwazin û ez dibêjim ez mêra na kim; ji bona xatirê te, ko te ta' b bi mi re dîtiye, mi wan xorta qebûl kir, de here mal û ê ko ji wana ez dixwazim, bela bê nav bexçê bavê min bi şev, ezê herim cem û ezê lê binêrim; pîrê jê re got; baş e.

Pîrê vegeriya hat mal. Şêr jê re got: hê pîrê te çawan kir, pîrê jê re got: min keçik razî kiriye; bela êvarê Qemerzeman her nav bexçê bavê wê; keçik wê bê cem wî, wê hevdu bibînin.

Êvarê pîrê rabû, fanûsek bixwe re hilanî, û da pêşiya Qemerzeman; gihande nav bexçeyê hakim û jê re got: de li vê derê be..

Pîrê vegeriya çû mal, Qemerzeman ma li nav bexçe; ji xwe re dirê û tê.

— ne qediyaye —

# PÊJINÊN DINYAYÊ

Xebat - Fidakarî - Serfirazî - Serdestî









Ji Bergehên Kurdistanê : Dergeh, Ayîn û Zar û Zêçên Brayên Me Ên Delal Êzedî.

Sal 2 — Hejmar — 48

# ROJA NÛ

Duşemb — 15 Gulan — 1944

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 15 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 2 lîreyên ingilîzî. Bihayê Hejmarekê; 15 Qemerî.

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc; Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41 Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## KURDISTAN

### YEKITIYA KURD

ÇI YE, Û BI ÇI PÊK TÊ

1 — Yekîtiya Zarav ; 2 — yekîtiya Tîpan ; 3 — yekîtiya Cexrafî ; 4 — yekîtiya armanc ; 5 — yekîtiya Raman ; 6 — yekîtiya Dînî

*1 : Yekîtiya Zarav*

Di Kurdistanê de, heft zarav an şêwe hene ; herwekî : sorî, kulhorî, bextiyarî, hawirman, gewran, zazî û kurdmancî.

Divaye ev heft şiw bigjîne hev û zimanekî tevayî bête pê ; ev jî bi havila xwendevan û rojnameva nên me ê zana pêk tê.

Divê ji van her heft zaravan, xwendevanê me hebin, û her yek bi zaravê xwe şihir an nesir bişînin rojnameyên kurdî ; gerînende her dem pirsên diva û zanakî ji nav bigre û di nav zimanê kurdî de biçîne, pirsên ko di kurdmancî de tune bin, ji van zaravan teva bikin bi vê pêçandinê yekîtî û nêzingî û piraniya zimên pêk tê ; heke xwediyê van şêwan bêjin : çima zarawê me na keve rewacê ? !

Ev jî ne pirsekî zanistî û welat parêzî ye ; lewre, di van her heft zaravan de kîjan zarav dewlemend û pey ve manin vî zehf bin, divê ewê bibe zimanê tevaya Kurd. Madam armanc û raman û bêja kurd yek e, divê kurdmancî mişteqê kurd û Kurdistanek xweser bê.

Çewa ko mi, di şihrekî xwe de gotiye : Lorî, kulhorî, û zazî bextiyarî tev bizan. Hawirman, kurdmanc û gewran, yekwe wərê me Îran; Nav bira zaran, ji bo me yek hevok û bêje ye,

Dîn û mezheb nayê hijmar, lê tu kurdmancî bizan.

Herwekî di welatên beyanî ên pêş ve çûyî de, zaravên tîvel hene, di nav van zaravan de, yekê tokiz bijartin, û ên mayîn, bûn per û baskê zimên. Em jî bi wê rê dikarin bigihin qûnaxa azadiyê.

*2 : Yekîtiya Tîpan*

Her xwende dizane ko tîpên xweser ji me re tune bûne ; tenê hin şahir û qelasîkan dîvanên şihir û mîna « Xanî » — rehmeta xwedê lê bit — folklora xwe, bi tîpên erebî nivîsandine ; ew jî bi awa û qeydeyên zêr û ziberan.

Bi zor dihatin xwendin, lê dîsa temamî ne dihatin xwendin, weke: xwe û xû ji her du dernediketin û wekî din jî bê, bi tîpên kurdî, tu kêmasî di zimanê me de nîne. Carna rojnama « Gelawêj » digîhe me, bê ko zarawê sorî, em temam nizanin, ji ber ko tîpên erebî ye, em qenc ni karin bixwînin, hêvî ji xwedê, kurdên hemî welatî, dibe ko di vê babetê de înadê ne kin û hêvî heye ko na kin jî. Divê herî her tiştî yekîtiya kurd, bi yekîtiya tîpan ve teva bibe. Heke em bêjin, latînî tîpên beyanî ne, belê tîpên erebî jî ne yê me û ne semawî ne,

Ji xwe ji hemî tîpên cihanê re neqiş û elametên muxaberê tên gotin. Bi gotinekê zanistî kêwî dibe ko her çar Kurdistan dest bi a.. b.. c... bikin ; çewa 4 milyon birayên me Kurdistana Bakur, bi van tîpan hîn bûne.

*3 : Yekîtiya Cixrafî*

Erdê Kurdistanê bi awayê xerîtê ji her kesî re nas e. Şabas û peyman ji Yezdanê pak re ko di kişwerê me de, tu nav birên me û biyanî tu nin : tenê di ber baskê feleka reş de, em pengizîne ; û di çar hawîran de dijîn. Lê erdê me wek « pelasekî kerkit » raxistî û em her çar welatî di rex hev de dijîn û haydarê roja xwe ne.

Di dema aşîtiyê de, divê dengê Kurd û daxwaza Kurdistanê yek be, ne kû her welatek, bi awakî ne dîtî, bêne xapandin û xebata hinde salî û xwîna şehîdan li erdê xin ; û me hember neyar û li pêş alema cihanê şermende bikin û di dîroka miletê Kurd de, me bednam bihêlin ; û 10-12 milyon kurdin ber mirad, di kurtala dûjeha neyar wer kin. Hêvî dibe ji nuho dé, ber hev û du, ji wê tirba reş û kûr badin û bidin ser riya azadiyê. Ma ne şerm e ho em ji bo meznahiya zeîm û hin xûdpesendan bibin kerî, kerî !... Ma çend Kurdistan hene ko çend xwendekar hebin, me tevan Kurdistanek divê û azadarê kurd kî be, hemî kurdan ew divê.

*4 : Armanca Kurd*

Armanca Kurd, serxwebûn û dem û dewrana Kurdistan e. Ev daxwaz ne tekane ye, Azadarî û berxwedariya teva miletê Kurd e.

Wiha neng e xebat, canbêzarî û comerdî ji namûsa hemî lawanê kurd e.

Her xort û her xwendeyê ko hewiya xebat û camêriyê, ji xwe dibe, divê ew bi xwe bigere malik û li batên riya xebatê bibûne û bi awayê xebatê bawerî bide û dest bavêje zincîra xebata yekîtiyê, madam bêja kurd yek e, nav birên partiyan ji bo çi ?

Berberî û partî û navbirîya hevalan, li ba kîjan Mîrzayê hebe, ew dijminê fikra me ye, heke bira, û bav, ap û lawên me jî bidin ser vê rêça şermezar, û heke em jî terka wan nedin, em jî kem teba ne.

Lewre ev riya dûr û dirêj, ya me daye ber xwe, qunaxa wê dirêjahiya omrê me ye.

Heya bi rijandina xwîna me be jî, em xwe na hêvişînin Çewa ko şehîdên me ên welêt, kevir û latên Kurdistan, bi xwîna xwe xemilandine û dê bixemilînin jî !...

*5 : Ramana Kurd :*

Ramana kurdên her pênc hawîran yek hikûmeta teva Kurdistan e ; û ji hemî zarawê kurdî bijartina yek zimanekî resmî ye. Serekcivîn an xwendekarî, xelaskarê miletê Kurd, tête niqandin.

Li hember neyarê Kurdistan, yek deng û yek destekî ristemî em dirêjê tola welat dikin ; çewa kirine.

Di roja aşîtiyê de, di wê komela heqbelavkirinê de, divê em jî xwediyê peyiv û dozekî bin.

Li ser kursiya heqşinasî berşifa neyarê xwe bidin û bi dilovaniya Hevalbendan, li xweser bijîn ; ji bo vê ramanê, ji niho ve, em tev hîvî û guhdarê emrê mezinên xwe sekinîne.

*6 : Dîn û Mezheb :*

Rûniştmanên Kurdistanê bi çar ayînan lêkve dibe, her çar tîvel ev in : Sinnî, elewî, êzedî, file.

Vana her yek, bi dînê xwe ve aza ne. Tu kes ne derûdê-kefîlê-dîn û mezhebê hesekî ye ; lê Kurdistan erdê bavê me û landika me her siyan e. Yezîdî, elewî û sinnîyan e.

Em sê bira ne, yek xwîn û yek ten û yeknav in, û yek milet in. Serxwebûn û serbestî bi navê Kurdistanê, ne bi navê dîn û mezheb û olê ye ; lê navdariya rûspîtî û dîrokî li gora fedakarî û xebatê tê nas kirin.

Hin, nav welatiyên me, aşorî, kildanî, êrmen, suryanî, û cuhî ne, ew jî hevalê me, û hêvîdarî jîneke dilovankarî ne ; heke wan xwe, bi me ve girêdin, em wan heval û cîranên xwe dijmêrin, çewan bav û kalên me bi hev re bihortine, emê hêj bêtir û çêtir, bi hev û dil geş bin ; divê ew hêviya qenciyê ji me bikin, ne ko bi gotinên xerezkaran bêne xapandin.

Lewre, di rojên pêşber de ew ni karin terka Kurdistanê bikin xirabî dişwariyê tîne ; qencî rûspîtiyê pêk tîne

Ê ko zane dizane ; ê ko nizane, tim xizan e; bela serî tim ziman e, li ber derdan bê eman e, roja ko tê bê guman e.

*Cizîr : H. Hişyar*

## Ber Bi Serfiraziyé ve

MOSKÛ. — Sebastopol ketiye destê qiwetên rûsî.

LONDRE — Brîtanya Mezin û hikûmetên kişwerê brîtanî ji 1-ê çiriya berî sala 1941 î û heta 31—ê adarê sala 1944—an 5.031 tang, 6.778 belafir, û ji bona 80 milyon lîreyên ingilîzî zad û zexîre, mekîne û hûr û mûrên din şiyandine Sovyetistanê.

LONDRE — Haziriyên eniya diwemîn bê etlahî dom dikin, go tiye Radyoa Luksemburgê.

ENQERE — Radyoa tirkî elam dide, ko serê sibehê payetextê Romanyayê bi awakî xurt hatiye bombardiman kirin.

CEZAYIR — Bombeavêjên Hevalbendan ên giran li Wîner Noys stadtê xistine, axa Ewistirayê.

LONDRE — Radyoa Londrê elam dide: Eleman dixwest ji Parisê 5.000 xebatker berhev bikin û bişînin Germanistanê; lêbelê bitenê 450 hebên wan hatine komgeha rêkirinê.

## BOMBARDIMANÊN GIRAN

LONDRE — Duhî 3.000 belafirên Hevalbendan dirêjî hêjagehên dijminan yên erdê Frense, Belçîke û Luksemburgê kirine. Di nav sê rojan de, refên bombeavêjên xurt, sê cara li Berlînê xistine. Radyoa elemanî dibêje ko çekê Hevalbendan ê hewayî di ser Brandenburg— wilayeta Berlînê— û di ser erdên Germanistana Bakur, bakur — roava roava û nîro roavayî re firiyane û êrîşî hêjagehan kirine.

LONDRE — Li gora nûçeyên ko ji Sviçreyê tên, Serfermandariya elemanî dike qiwetine nû bişîne Belqana.

NÛ DELHÎ — Bombeavêjên brîtanî bendera Sowelê, ya ko destê japonan de ye, xira kirine.

BERN— Welatperwerên frensiz zehf trênên elemana ên eskerî ber hewa kirine an ji rê derêxistine û pê zererine dijwar gihandine wan.

JENEV— Elemana 1.2.0 peyayên frensiz ên hêja girtine û şiyandine Germanistanê; hal û hewalê wan welatperweran çilo ye, ne nas e.

LONDRE— Hêsîrên talyanî xwe ji bona xebat û arîkariyê, qedî mandine hikûmeta Brîtanya Mezin.

## DER ENIYA BIRMANYAYÊ

NÛ— DELHÎ— Di Hindistanê de, li Kohîmayê, êrîşên Hevalbendan pêş ve diçe; yekîneyên brîtanî di bakur— rohelatê vî şaristanî de, zehf niqteyine hêja standine.

NÛ DELHÎ— Di axa Kohîmayê de, êrîşa Hevalbendan pêş ve dikeve, her çend jî, hin taxeyên vî şaristanî, hêj di destê japona de ne.

LONDRE— Cara dawîn 1.500 belafirên emerîkanî 1.600 ton bombe avêtine hêjagehên Berlînê.

CEZAYIR— Ev sê roj in, pey hev û du, refen Hevalbendan hêjagehên payetextê Romanyayê, Bukreş, dane ber bomban.

LONDRE— Leşkerên Yugoslavî Kladano standiye, Zehf çek û posat û zad û zexîre ketine destê yekîneyên yugoslavî,

WEŞINGTON— Sala ko bê karxane û destgehên emerîkanî ji bona 60 milyar dolaran, çek û posatên şerî çêkin.

# NÊÇIRA BERAZAN

Em, di rêyên bi devî û bi kelem re di çûn..Di gelek newalên kûr, di pir zinarên bilind di hevraz û hev xwarên dûr û dirêj re derbas di bûn.. Ez û du hevalên xwe bûn; Sehên me, bi me re. tifingê me, li milê me..rextê me, li pişta me bû Destê me, bi lepik.. lingên me bi gorên rîsînî û pêlavên xurt nuxumî: bedena me, bi çekên tekûz girêdayê bû. Zivistan û çele bû.. em di çûn çiyayê Mancêlê,nêçîra berazan.

Ev, ne cara pêşîn bû.. Gelek carê din em bû bûn rêwiyên vê riyê. Nêçîra berazan ji me re bû bû meraq û serguzeştek. Me ji vê serguzeştî heweseke derûnî di stend.

Bi ro, em di meşiyan.. bi şev jî di şikeftan de, di man.Piştî sê rojan me, nêzîkî li armanca xwe kiri bû.. berbe êvarê bû, dunya pir sar bû, em gelek westiya bûn. Lê em, nêzîkî şikefta « Govê » bû bûn. Gava em bi gihiştina şikeftê,me yê ji xwe re agirek dada, xwe germ û rehet bi kira.

Em gihiştin ber şikeftê.. lê muxabin şikeft, ji bextê me re, hilweşiya bû. Di wî cihî de tu şikeftê din tu ne bû. Em nikarî bûn bi şûnda jî veger in ; Di şev—reşêde, di wan rêlên bi kevir—kûç, bi rêve çûn, ne mumkin bû.. Çar ne çar, me xwe da ber tatekê. Cî pir teng bû., têra hewîna me û sehê me ne di kir. Bi dişwarî me xwe bi cîh kir û me agirek dada. Piştî şîvê, bayekî reş dest pêkir, peşkê baranê ha tin. Herke çû, ba, bêtir.. baran, zêdetir bû. Agirê me vedi mirî, canê me şil di bû. Em ji serma di qefilîn. Sehên me jî di ricifîn, teriyên xwe di kir in nav lingên xwe, berê xwe bi jor ve di kir in û kûr kûr di zûriyan. Xuya bû ku înzara encameke xerab di dan me... Herke çû şev, reş û tarî, ba û baran bêtir di bû. Tenê gava birûskan ve di dan, me kanî bû ber xwe bidî ta. Em di tirsiyan ko tebayên kovî bi ser me de bi girin û me şerpeze bi kin.

Nîvê şevê ba kêm bû.. baran sekinî... ewrên reş, perçe—perçe belav di bûn.. li cî ciyan histêrkan xuya di kir in.. xwîn û taqet li me ve di geriya.

Lê qederek derbas ne bû bû,li şûna êwrên reş, ewrên spî û bilind çê bûn.. bê gûman ewrê berfê bûn.

Bi destê sibehê re berf lepe - lepe hate xwar.. dunya ronî di bû me kanî bû ber xwe bi dîta. Me xwest em bêlan ( merhele ) ekê bi şûnda veger in û berî felaketekê em xwe bi gihîn in şikeftekê. Em, li rabûnê bûn, keriyek beraz li me der bûn.. ew berazên ku, berê qulik qulik ji ber me di reviyan, vê car har bû bûn û xwe dirêjî me di kir in. Me her sê hevalan peştên xwe dan hev û me berê tifingê xwe, bi wan ve kir in. Sehên me jî, ji me re di bûn sîper, mîna pilingan d'ajotin ser wan. Cengek mezin û no di nav me de çê bû. Berikên me di qediyan, lê hêjmarê berazan — çiqas di hatin kuşt in jî— bêtir di bûn.. kerî, kerî di hatin gazî û hewara wan.

Berf, pêda di bariya.. bager û pûkek ecêb çê bû bû. Niva ne tenê beraz, ji her çeşîdî kovîyên derende xuya di kir in. Wan jî bi çavên birçî dirêjî me û sehên me di kir in..

Êdî, berikên me qediyan.. Vêcar, me sungî bi ser tifingên xwe ve kir in.. qederekî me bi dest lepê jî, li ber xwe da.. paşê tab û taqet di me ne ma; em her yek li cihê xwe ket in..

Berê her sê kûçikên me, paşê her dû hevalê min hat in kuşt in. Koviyan, cendekê wan bi erdê re kaş di kir in û di bir in...

Ez, keti bûm kortalekê..berf, li ser min tije bû bû..ji ber çavên koviyan wenda bû bûm. Herke di çû berf, li ser min bêtir barê min giran tir di bû. Min nikarî bû xwe tev bi livanda. Lê vê car min ne sar bû.. mîna di nav kurkekîde bim, canê min germ di bû.

Bîna min diçikiya..di nav kefenekî spî û tebiî de, hêdî - hêdî, di mir im.Hêvî çû ara xelasê ne ma bû.

Gava meriv li ber candayinêbe, hemî serbatiyên meriv bi carekê tên bîra meriv û mîna şirîtên sînemayê, li ber çavên meriv derbas di bin; Di wî halî de gelek tişt di hatin bîra min.. mafir ev dengê ahenkdar — ku berî bîst, sî salî, gava ez zarok bûm — min di bihîst:

« Ellahî heql... mewlayî heql.. rizayî heql.. »

Ev dengê derwêşekî cil - kesk bû. Her sal, du, sê caran, û her ca rê ji nişkave xuya di kir.

Bejn — dirêj, esmer, rî-sor bû.. Cibê wî kesk, kum û xavik — kesk bû.. Tizbiyek kesk û heb - gir di hustiyê wî, keşkûlek ji guîzê Hindê li milê wî, çilakekî dirêj û ser—hesin di destê wî de bû. Kuçe, kuçe di geriya û bi dengê xwe yî ahenkdar bang dikir:

« Ellahî heql.. mewlyî heq ! rizayî heql.» Her kesî jê re, zarokênî xwe di bir in.. wî jî destê xwe yê pîroz di ser serê wan re di bir û d'anî...

Mala her kesî, mala wî bû; li her cî karî bû bi xwara û ve xwa ra û raketa.. Pîrika min bi xwe pir xatirê wî di zanî bû; pere û xwarin ji wî dirix ne di kir.,Wî jî destê xwe, li ser serê min di gerand, û bi dizî tistek di xwend û pif di kir dora min... Gelekan ji wî re di got in: — « Xocê Xızir e.. ji nişkave wenda û ji nişkave xuya di be.. di rojekê de, kane dinê gişî bi gere...»

o o o

Di bin tebeqeyên berfê de, hilma min di çikiya,xwêdaneke germ, ji laşê min bi der di ket. Hingî,serencamê wisan di hatin bîra min,û çav - endazî ( menzere ) yên welê di hat in ber çavê min.

Ez, di nav muhîtekî dîndar de xwedî û mezin bû bûm; baweriya min hebû, ku ew derwêşê cil - kesk, ew Xocê Xizir, nuha bê îmdada min, û min ji mirinê xelas bike. Ew derwêşê xwedî keramet û xwe dî mûcîze-ku di rojekê de kanî bû li dinê gişî bi gere-kanî bû di wê gavê de, bê hewara mirîdê xwe yî kevn jî...

Ez, di vê hêvîyê de bûm, ji hatif dengek hate min, di got:

« Metirse, ez têm...»

Min li jor nêrî tebeqeyên berfê ji dîtina çavê min re manî ne di bûn; min dî ji jor ve, murxekî gir guş, guş, di fire û ber be min da di keve.. paşê li ber min venîşt.

Min bi hêviya Xocê Xizir dilê xwe vejan di bû..min di got qey ew derwêşê min î cil-kesk û keşkûlbi dest e. Muxabin, murxekî per-dirêj, sîng-bi pûrt û ser—girover (mîna Stalîn) ser mezin bû.

Hingî, hêvîya min şkest; bê gûman ev mûrxekî berate (cenaze) yan bû.. Qey berî ez bi mir im, bîna min hilaniye û hatiye cendekê min bi xwe.. Ez pir di tirsiyam.. lê murxê gewre û pir heybet, ne ji wan murxê beratan bû; pençê xwe yî polayî bi dilovanê li ser ruyê min gerand, û ez avêtim ser basikê xwe yî hesinî, û ber be ezmanan firand im.. Êdî tirsa mirinê ne ma bû.. Bi dilekî azad û bi çavekî jîndar, min li dinê di nêrî....

Gava min çavê xwe ve kir, min xwe, li ser basikê tu murxan ne dît.. Ez li mala xwe, di nav nivînê xwe de bûm..Tuxtorekî cil sipî serê min bilind di kir û bi kefçîkî derman bera qirika min di da.. li rast û çep, du, sê merivê min, bi tirs li min di nêrîn û hêsir ji çavê wan di herîkîn. Tuxtor di keniya û di got:

—Êdî metirs in.. Nexweşê me, kefen çirand...»

Heşê min hêdî-hêdî dihat serê min., ez, ji bîst rojan de ne xweş bûm.. nexweşiya min tîfoseke giran û bê eman bû....

Şam; 23—4—944 Qedrî Can

# MIREKA CIHANE

MIRÊKA CIHANÊ MIRÊKA WÊNEYÊN ŞER Û AŞÎTIYÊ

## CENG & BIHINCEG



Lergeheke Spehî û Hehfeza



Şefqeyên Jin û Dotên Ewripayê

MOSKÛ— Serfermandariya Sovyetî şevê çûyî denezana jêrîn belav kiriye: Leşkerên enîya ukranyayê a çaran piştî çar rojên şerî çeper û asêgehên dijmina ên beton û hesinşidyayî zîr û zeber kirine û Sebastopol standine; bender û qerargeha Behra Reş a qaimtir û hêjatir. Bi vî awayî axa Qrimê ji dijmina bi timamî, hatiye paqij kirin. Di eniyên din de, şayesteyî gotinê rewiş guhêrek çênebûye. Li 8-ê gulanê; 48 balafirên dijmin hatine avêtin erdê: der şerên hewayî û bi agirê topên me ên ber-balafir.

LONDRE— Eleman didin zanîn ko ordiya Sor di Dniestra jêrîn de, dest bi êrîşine mezin kirine; hawîrên Moskovayê derew bi alî vê nûçeyê ve didin.

Di hêla Dniestrê de, elemana bi xwe bi qiwetine mezin ber-êrîş kiri bûn û her wekî êrîşên wan hatine paş ve birin, bi belavkirina wan nûçeyan, dikin bêçareyiya xwe veşêrin.

LONDRE— Di nav 24 saetên dawîn de refine brîtanî û emerîkanî ên mezin dirêjî axa Germanistanê kirine û lêxistine; 1.000 bombeavêj û 1.000 nêçîrvan têkilî van êrîşan bûne.

2ème ANNEES — LUNDI 15 MAI 1944 — NUMERO 48

# LE JOUR NOUVEAU

Direction: Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél.: 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur - Propriétaire: EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 15 P.L.S. - Abonnement
Syrie-Liban 15 L.L.S. Etranger 2 L. Stgs.

## KURDISTAN

Après la dernière guerre, les Alliés, s'inspirant des principes wilsoniens, avaient non seulement envisagé la création d'un Kurdistan autonome, mais ils en avaient incorporé le projet dans un Traité International, le Traité de Sèvres. Un coup de force a empêché que le peuple kurde ne bénéficie de l'application de ce traité. Les huit à neuf millions de Kurdes ont été partagés, avec leur territoire, entre plusieurs états. Dans ces états, ils constituent des minorités ne jouissant d'une certaine autonomie nationale que dans la mesure variable où une puissance européenne peut la leur garantir.

La division et l'asservissement du Kurdistan ne pourront être maintenus au sein du monde nouveau de l'après-guerre. La question devra être reprise, dans l'esprit qui animait les rédacteurs du Traité de Sèvres. La seule solution compatible avec les principes pour lesquels luttent aujourd'hui les Alliés, c'est la création d'un Kurdistan autonome, embrassant tous les territoires habités par les Kurdes.

Il se trouvera peu de cas où l'application littérale de la Charte de l'Atlantique offrira moins de difficultés de principe : les Kurdes habitent un territoire compact, riche en ressources naturelles. Les minorités ethniques y sont très peu nombreuses.

Mais cette solution radicale de la question kurde peut heurter certaines ambitions, désireuses de maintenir le statut quo : des objections pourront donc être soulevées. Nous allons tâcher, pour la défense de notre thèse, d'approfondir certains aspects de la question.

1. — Les Alliés ont pris les armes pour sauver la civilisation menacée par un régime qui pratique systématiquement la cruauté et l'injustice, dans ses formes les plus brutales, au mépris des droits les plus élémentaires des peuples. En Turquie, en Iran, les Kurdes ont subi un régime tyrannique qui ne peut être défini autrement et dont la suppression s'impose au même titre. Cet état de choses constitue lui aussi une offense au monde civilisé

2. — Le partage d'un peuple de huit à neuf millions d'âmes entre trois ou quatre états crée, dans chacun de ces états, une minorité dont l'existence implique des frictions continuelles entre cette minorité et la population majoritaire. Cette situation met en danger constant la sécurité intérieure et extérieure de ces états.

Les zônes frontalières de ces états, là où ils se touchent, sont habitées par des Kurdes qui, quoique de nationalités différentes, sont animés les uns envers les autres d'un profond sentiment de solidarité. Chaque état ne peut donc avoir le contrôle de sa zône frontalière qu'à condition d'avoir également le contrôle de celles de ses voisins. Il en résulte des ingérences qui sont la cause de complications diplomatiques et qui risquent toujours de devenir le pretexte d'interventions armées. En outre, les mouvements de population entre les différents territoires kurdes ne peuvent être empêchés qu'à condition que, dans les différents états, les Kurdes soient soumis à un régime également oppressif.

Le maintien de ce régime d'oppression devient la condition même des bonnes relations diplomatiques entre les pays à minorités kurdes ; l'ouverture d'une école kurde dans un des états voisins sera considérée par les Turcs comme une atteinte à la sécurité intérieure, de leur pays.

Le Kurde, toléré par les autorités, bon gré mal gré, dans la partie kurde du territoire, n'est plus qu'un étranger dès qu'il en sort. Il ne peut donc considérer l'état dont il est le ressortissant, comme sa patrie et il est, au contraire, rempli d'un sentiment d'amertume à l'égard de l'autorité centrale du pays ; il tente, par des révoltes, de secouer le joug qui l'oppresse.

3. — Pour chacun des états qui se sont partagés le Kurdistan le territoire kurde qui est compris dans ses frontières est comme une colonie qu'on craint de se voit arracher. Cette crainte est d'ailleurs légitime dans un siècle où, pour la deuxième fois, de puissantes alliances se sont constituées pour la libération des peuples opprimés. Ces états traitent donc les fractions du Kurdistan en autant de colonies d'exploitation desquelles on tâche de tirer le maximum d'impots et de soldats, sans y entreprendre aucune oeuvre constructive. L'autorité n'y appuie pas l'initiative privée ; au contraire, elle la décourage. On tend à détruire l'indusrie locale au profit du développement de l'industrie située dans la partie du territoire habitée par la population majoritaire.

4. — Quand un des états comportant une minorité kurde se croit assez fort pour envisager l'incorporation définitive de son territoire kurde, il tâche d'appliquer l'assimilation forcée.

Cette politique n'a pour résultat que d'exaspérer le particularisme national des Kurdes. Les Kurdes qui, autrefois zoroastriens comme les anciens Perses, n'ont pu être assimilés par eux, aujourd'hui musulmans, ne peuvent être assimilés ni par les Turcs, ni par les Arabes, ni par les Persans. Ce peuple qui, à travers 4000 ans d'histoire, a maintenu son individualité nationale sous toutes les dominations, ce bastion indo-européen qui, au coeur de l'Asie Mineure, a résisté à toutes les invasions, est inassimilable. Des différences de race et de langue comme celles qui séparent les Kurdes des Turcs et des Arabes, ne sont pas seules en cause. La vitalité de leur individualisme national les séparent tout autant des Persans qui, quoique de race fortement mélangée d'apports tatares et arabes ont pourtant avec eux des affinités linguistiques et raciales.

La tentative d'assimilation la plus systématique et la plus brutale est celle qui a été faite par les Turcs depuis le début du siècle. Elle a lamentablement échoué. Les Turcs ont voulu favoriser l'immigration de familles turques en territoire kurde. Loin de contribuer à la turquisation des Kurdes, ces familles turques se sont assimilées à leur entourage; des rapports secrets du Gouvernement Turc en font foi. Les Turcs ont amorcé la déportation en masse de Kurdes vers l'Anatolie; des révoltes ont éclaté, si terribles que cette méthode a du être abandonnée.

Les Turcs ont interdit l'usage de la langue kurde, le port du costume kurde; ils ont prohibé les chansons kurdes. Les jeunes Kurdes ont été forcés de fréquenter des écoles turques. Le mot « Kurdistan » a été rayé du vocabulaire géographique turc. Peine perdue: les Kurdes parlent toujours leur langue; les inoffensives chansons populaires sont devenues des chants subversifs; les jeunes gens quittent l'école turque plus Kurdes qu'ils ne l'étaient avant d'y entrer. L'enseignement forcé en turque donne lieu à des bagarres; en grand nombre, les écoles sont fermées.

5. — On a peut-être songé, comme offrant une solution à la question kurde — puisque l'assimilation forcée ne réussit pas — et pour sauver l'intégrité territoriale des états qui se sont partagés le Kurdistan, au massacre. En effet, on ne peut oublier que les Arméniens de Turquie ont été les victimes de l'application de cette méthode. Mais, en premier lieu, aucun des états en question n'est assez fort pour massacrer impunément les Kurdes ; pour le faire, il leur faudrait l'appui d'une puissance occidentale. En deuxième lieu, l'extermination des Kurdes transformerait le coeur du Moyen-Orient en un désert ; et on ne voit pas qui remplacerait ces robustes paysans.

6. — Est il possible de garantir les droits nationaux kurdes sans qu'on transforme, en ce qui concerne le Kurdistan, la configuration politique du Moyen Orient?

L'histoire récente prouve que, pour assurer la protection de ces droits, il faudrait installer, dans chacun des états qui se sont partagés le Kurdistan, un contrôle des puissances occidentales si étroit que l'indépendance de ces états deviendrait absolument illusoire.

7. — Songerait-on, pour simplifier le problème, à incorporer tout le Kurdistan à un des états du Moyen-Orient ?

Ce serait vouloir remonter le courant de l'histoire : le plus forts de ces états, le seul qui se soit montré capable de réunir de nombreux peuples sous sa domination, la Turquie, n'a pas pu les empêcher de se détacher d'elle. Remarquons que l'adjonction de la totalité des Kurdes à un des états du Moyen-Orient aurait pour résultat de le transformer en un pays à majorité kurde.

8. — A ceux qui attendent la stabilité politique et économique du Moyen-Orient de la création d'un bloc d'états, nous dirons que la formation d'un état kurde homogène ne constituera pas un obstacle à la réalisation d'un tel plan.

Un bloc d'états ne peut tirer sa stabilité que de celle de ses éléments constitutifs. Cette stabilité ne pourra être atteinte que si on applique la solution de la question kurde telle que nous l'envisageons.

9. — Pour terminer, répondons à ceux qui objecteraient que les Kurdes, dans l'histoire, n'ont jamais formé d'état unifié et indépendant.

Citons d'abord Saladin et les Ayoubites qui, avec leurs Kurdes, ont créé un état puissant et glorieux qui a permis au monde musulman de résister aux attaques des Croisés.

Mais rappelons surtout qu'à toutes les périodes de l'histoire, et jusque tout récemment des principautés kurdes ont maintenu leur indépendance. Ces principautés dans les montagnes de Kurdistan, dont la nature même invitait le morcellement en groupements séparés, ont conservé à travers les siècles la Nation Kurde. Dans le monde d'aujourd'hui, montagnes et vallées ne constituent plus les obstacles qu'elles représentaient autrefois.

Pour le peuple kurde, le système des îlots de résistance était une force ; mais, faisant face aux nécessités du monde moderne, ce peuple veut se constituer en un état unifié.

Sal 3 — Hejmar — 50

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 35 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 5 lîreyên inglîzî. Bihayê Hejmarekê; 25 Qemerî.

# ROJA NÛ

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Duşemb — 16 Tîrmeh 1945

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc: Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

## Civanê Sê Mezinan

Civanên sê mezinan, yên serekcimhûrê Emerikayê Truman, Serekwezîrê brîtanî Çorçîl û Mareşal Stalîn, li Potsdamê, der nêzingî Berlînê destpê kirine. Îro, ji bona hemî miletên Cihanê, bûyera hêja tir ev civan e; ji xwe têtê gotin ko pê deriyê dîwana silh û aşitiya dinyayê, dê vebe. Têtê gotin ko di vê pêvokê de, pirsên jêrîn bêşik bikevin axaftinê: gerandina germanistanê û karên di wê bi tevayî, pirsa Belqana, pirsa welatên rohelatê nêzing û navîn, pirsa Sovyet û tirkî, pirsa şerê japona, ya pesifîkê û pirsa bixwedîkirina Ewrîpayê.

## SAN FRANSISKO

Nimînendeyên pêncî miletan, neh heftan, di San Fransiskoyê de xebitîne.

Armanca wan a mezin yek bû: heqê hemî nijadên dinyayê divê bêne nas kirin, biçûk û mezin tevda; û bi vî awayî, divê milet êdî, şerî hev û du ne kin û êdî pirsên sivik û giran, ne bi zorê, ne bi çek û xwîn; lê bi axaftin, bi mijûlahî, bi qencî û heke hewce bû bi hikmê mehkemeke navnijadîn; bi destê mehkemeya ko ji lebatên miletan hevedu dani ye, bête safî kirin.

Herwekî dîrok şanî me dide, di wextên berî da, mirovan heqê xwe, dema hewcedariyê de bi zorê û bi destê xwe distandin.

Hakim û mehkeme tu ne bû.

Lê hêdî, hêdî miletên cihanê pêş ve ketine, di xwendegah û zanîngehan de, hînî rastî û nerastiyê; heq û neheqiyê; edalet û zorkeriyê bûne, û sehkirine ko zor ne tiştekî bikêrhatî ye, dawiya zorê nîne; divê mirov li ser riya heq û rastbûnê bimeşe û her kes bi heqê xwe qail bibe û ji bona bi cih anîne van qeydeyan, destek divêtin, rabûn hakim û mehkeme danîn û ji bona peyayên dilreş ko qîma xwe bi hikmê mehkemeyan ne dianîn, û di zorkeriyê de, pêdidan erdê polîs û cendirme nivîsandin.

Îro, gava ez ji kesekî dawa tiştekî dikim; diçim balê; an peyayekî dişînim cem wî, an ew bi xwe tê cem min, û em bi axaftin û mijûlahî dikin dawa xwe safî bikin, an bi navçîtiya, mezinekî.

Heke wilo çênebî, û em li hev ne hatin, ez radibim, diçim mehkemê û di pêşiya hakimên milet de, heqê xwe jê dixwazim.

Heke dawa min ne heqe, ez ji mehkemê destvala derdikevim; no, heke heq bi mi re ye, ez digehim heqê xwe.

Heger peyayê ko li gora hikmê hakiman divê tiştekî bidî min, ne da, polîs û cendirme, bi emrê mehkemê, vî tiştî bi zorê jê distînin û didin min.

Bi vî awayî, bê ko emê pevçin, an li hev û du xin, an hev û du brîndar bikin, an bikujin, dawa me safî dibe.

Îro ko em pê elimîne; ecêbmayî dimînin ko kal û kalikên me wilo ne dikirin; û carna ji bona tiştekî biçûk hev û du dikuştin û pirîcar dijminîtî diket nabira çêliyên du malbatan, û wan bi salan ve, xirabîtiya hev û du dikin; û carina jî, ji bona tiştekî sivik eşîrek dibû du bir û qayîş û ber beriya hev dikirin.

Her çend jî mirova, ev çend hezar sal in, ev rastî seh kirine; di nav bira miletan de, gava nexweşiyek an nesehkirinek çêdibû; hakim û mehkeme tu ne bû ko, bikeve nav wan û wan li gora qeydeyên heq û edelatê bimeşîne.

Carina xwedî heq, bi dara zorê digiha heqê xwe û carna jî, bi zor û zêr xwedî heq, heqşkênandî dibû, welatê miletekî an yên miletên bêsûç dihatin vegirtin, miletên aza diketin bindestiyê; di lepê zaliman de, dihatin êşandin.

Îşê miletan ev çend hezar sal in, wilo bû.

Piştî şerê 1914-1918- an, miletên Hevalbendà, xwesti bûn, Zilm û zorkeriyê ji erdê rakin; tiştekî mîna civat û mehkeme çêkirin û xebateke zor xebitîn da ko milet êdî şerî hev û du ne kin.

Lê di destê vê civat û mehkemê de, polîs û cendirme tu ne bû, û gava hikmek dida, yê ko jê nexweş dibûn, vê hikmê diavêtin pişt guhê xwe.

Şertnameya Miletên Hevalbend, ya ko niho di San Fransiskoyê de, bi tevkariya pêncî miletan hatiye danîn; bi polîs û cendirme ye; gava di nav miletan de, li ser pirsekê nelihev î hatinek çêbû, an dawayek hatiye rakirin; divê bi axaftin, b mijûlahî, bi çeyî û qencî û heke çênebû bi qerara mehkema miletan, bête safî kirin. Heke dewletek qîma xwe bi van bingehan ne anî, û dest avêt şûrê xwe, miletên cihanê ên mayîn, riya wî bibirin, û zora wî bibin.

Serekcimhûrê Emerîkayê M. Trûmen gotiye: heke di dest me de asasêu wilo hebiwa, ev şer çênedibû û bi milyonan insan— di vî şerî de 25 milyon peya hatine kuştin - ne diketin axa mirinê; û heke me xweş bala xwe ne da, bingehên nû danî; divê emê bizanin ko ji nû ve dikare şerek çêbibe û pê milyonên insan dikarin bêne kuştin.

Ma tu şik têde heye?

## Rengê Kevnare Me navê

Ey welat, em tev li kar in, bendî fermana te ne
Rêncberê axa welêt in, lê ne ebd û kole ne
Em hemî yekdest bira ne, îdî kurd navê sitem
Serbilind em dê bijîn, tev şah û gavan dem bi dem
Ger ne jîn em tev wekî hev, serxwe na bî ey welat
Rengê kevnare me navê, me divê jîn û felat
Ma tu zanî, em çima her dem bi hawar û eman
Tazî û birçî dinalin, kurd divêtin kinc û nan.
Çol û deşt û lat û şaxên te hemî mist in ji zêr
Zorkera ev tev revandin, mane em bê xêr û bêr.
Wa şiyar bûne kurên te, tev li kar in, wek piling,
Çar kenarên te dibazin, wek Cegerxwîn qîr û deng.

## Derdé Min-Derdé te

Şêxê min, destê te êdî, maçî nakim ez bese,
Kavil û wêran te hiştin, ev sera û medrese;
Şêxê Ewrîpa bi xwendin, wane baz in, bîrne jor
Em bi xişt û def û dîlan, paş ketin, tev mane kor!
Her keşakî deh zimana zanî, rengê Efletûn
Em çima hov û nezan in, ser di berde paşveçûn.
Qet bi sîwaka te dijmin paşve naçin gavekê
Bo çi tev mane perîşan, dil û bendê davekê.
Xortê kurda tev şiyar bûne bi pêta agirî
Bayê zanînê li pey wî, gur dibî qet namirî
Dev ji payê tu berde ev tiralî ma çi ye!
Ma ne şerm e, rût û xas e, kurd e, jar û birçiye
Bes di bin perdê de rûnê, ey ciwanmêr xwe binas!
Dijminê jîna welêt î, tim bi dest te tevr û das
Lê bibêjim, dê bibêjî, ev Cegerxwîn gawir e
No, di bextê te û Xwedê de, dil bi pêt û agir e!
Ez dizanim, min dirêj kir, pir li te peyv û kelam
Ger tu kurd û kurdperestî, em bira ne, wesselam.

Cegerxwîn

## ME BIHISTIYE

— Par, karxaneyên emerîkanî ji welatên biyanî re, ji bona 100 milyon dolar derman firotine.

— Şerê Filipînê gihaye dawiya xwe û 7000 giravên di wê ji japona hatine paqij kirin. Rûniştimanên van giravan 17 milyon in.

— Refên emerîkanî 26 bajar û şaristanên japona heta niha dane ber bomban. Karxane, destgeh, bender û depoxaneyên japonî derbine dijwar xwarine. Niho bombeavêjên emerîkanî rast bi rast dirêjî balafirgehên erdê Tokyoyê; payetextê japona dikin. Di van rojan de, şeş balafirgeh bi awakî xurt hatine bombardiman kirin.

— Mezinên elemana yên ko ji vî şerê xedar berpirsiyar in; mîna Goring, Donitz, Kaytel, Ribentrob, pêşia mehkemeke eskerî a navnijadîn de, cihaba kar û emelên xwe bidin û dê bêne êşandin. ji bona danîna mehkemeke wilo, Brîtanya Mezin, Frense, Sovyetistan û Emerîkayê dest bi xebatê kirine.

— Karxaneyên emerîkanî ji bona şerê japona 160 milyon bombeyên şewat û teqandinê çêdikin.

— Karxaneyên brîtanî di nav donzde mehên ko pêşiya me de ne, 250.000 otomobîla çêkin.

— Divê ez bikarim serbest baxêvim; li ser tiştên ko dizanim fikra xwe bê tirs bibêjim, heke min dil kir herim nêçîrê an masîvaniyê; divê ez û birayê min û hemî welatiyên min ji rastiyê hez bikin.

Me dît dawiya zor û zorkeriyê nîne; yê ko bi dara zorê dixwaze heqê xelkê bişkînîne; dawî perîşan û şerpeze dibe. Hitler di pêşiya me de ye.

— Wilo dixuye ko pirsa Polonî ketiye rê û hikumeta polonî a nû, ji aliyê Brîtanya Mezin û Emerîkayê jî ve, hatiye nas kirin.

— 33 milyon jin û mêrên brîtanî têkilî bijartina lebatên Civatmiletê Brîtanî ê nû bûne.

— Şerê Pesifîkê de, heta îro 600 hezar japonî hatine kuştin.

— Di nav bira Sovyetistan û Tirkyayê de, li ser lihevhatinekê axaftin çêdibe; ûris berî her tiştî Qers û Erdehan û di Çenek-Qeleyê de, ji xwe re cihekî ewle dixwazin.

## Wêne



• Leşkerên Ordiya Çardehemîn di Burmayê de. Herwekî baranine xurt dibarin, pêşveçûna tangan zehmet e. Lê mirovén hêja her tiştî pêk tînin.

Tangek ji rê ketî, têtê derêxistin.



Serbendên çînî yên Ordiya yekemîn ketine bajarê Rangûn: xelk bi şabûnî bi wan re dimeşin.



Serfermandarê qiwetên Hevalbend. an ên bejê; li Asya niro-rohelatî bi serbendên bilindpaye daxêve. General Sir Oliver Lîs, bi lekên xwe ên egîd Burma Nîroyî, ji japona paqij kiriye.



Zaroyan divê berî her tiştî, hînî xwendin û nivîsandina zimanê xwe bibin.

Di girtigeha Pilsenê de, du sed zaro bêxwedî û perîşan ma bûn. Gerînendekariya brîtanî ji bona van xwendegahek vekiriye; têde dot û law hînî zimanê xwe û elemanî dibin.

## Çîroka Kurdî

# QEMERZEMAN

4

Şêr hat cem wan rûnişt.

Hût jê re got: çima tu hatiye vê derê, çavê te li çiye?

Şêr jê re got: ez û xweha xwe saetekê nikarin ji cem hev du ferq bibin, ez hêvî dikim ji xwedê û ji te, destûra xweha min bidî, emê herin. Hût jê re got: kengê tu çû, keçka mîrê cinan. ji min re anî, ezê destûra xweha te bidim, an ko ne wilo be, destûr tune.

Şêr jê re got: Bajarê mîrê cinan, li ki de rê ye? Hût lê vegerand go:

Ma mi zanî biwa, minê ji xwe re bianîna... çi hewceyê te bû.

Şêr rabû, li hespa xwe siwar bû, û bi dinyayê ket. carekê li pêşiya xwe nerî ko toz û xubar bilind bûye, nêzîkî wan bû, nerî ko mirovekî dirêj û yekî kinik, ê kinik gazek heye, ê dirêj deh gaz hene; her du li hev du dixînin. Ê dirêj wê rahêje ê kinik, li ser serê xwe hilgîve û li erdê xine; ê kinik li ser lingê xwe diedile.

Ê kinik jê re got: xwezî ez gazekî dî jî dirêj bûma, te ê bidîna, bê minê çi b' kirina ji te.

Şêr li pişt vana sekiniye, ji xwe ra li vana diferice û got: arîkariya ê kinik ferz e, şûrê xwe kişand û çû ê dirêj, serê wî jêkir, ê kinik go: mala te ave, ev mîrê cinê şeytanî ye, ez mîrê cinê rehmanî me.

Şêr siwar bû li hespê xwe û ê kinik lî ber xwe danî, ê kinik jê re got: te qencîk mezin bi mi kir, ezê bi çi hewayî, qenciya te vegerînim; lazim tu bi mi re bê mala me,

Şêr jê re got; ser çava, meşiyan bi hev re, çûn bajarê wan, ehlê bajarê wîna, pêrî wan re hatin, gelkî jê dilxweş bûn û çûn malê hevalbendê mîrê cina şeytanî hemî kişandin ji xwe re anîn, bajarê xwe safî kirin.

Meclisa mîr êvarê geriya û gotin ji hev re, emê emê, çi qenciyê bi vî xortî bikin.

Hemua ji mîrê xwe re got: lazim tu qîza xwe bidî vî xortê delal.

Mîrê wan ji wan re got; serçava qîza min jê re ye, qîza min bitenê ne bese, divê em tişteki dî bidiniyê.

Şêr lê vegerand go: malê min heye, ez ne mûtacî tiştekî me, te keçka xwe da min, min qebûl kir, mehra keçka xwe birîn û xistin odakê, dinya bû êvar, ji şêr re gotin: here cem jina xwe razê.

Şêr çû Oda keçikê, keçik ji ber rabû, şêr bê ma'd bû, û di cihê xwe de rûnişt, keçikê jê re got: çima tu bê ma'dî, ma'dê te ne xweş e; te ez navêm, an tu poşman bûyî? şêr jê re got:

Bi xwedê ez ne poşman im, belê ez ji te re bi rastî bêjim. Mesela xwe, hemû jê re got; go: tu ne ji mi ra yî, ji Hût re yî, filan şkeftê de ye. Keçikê jê re got: mala te ave be, tirsa Hûtê wê şkeftê di dilê te de ye? Iş, Işê wî li cem min e. Sibehê ezê bikim ko ew bişewite.

Were işev rakeve, dilê xwe xweş bike, heya sibehê, Xwedê mezin e.

Sibehê her du rabûn, keçikê jê re got; here cem bavê min!...

Lawik biya wê kir û jê re got: ezê herim cem bavê te, jê re çi bêjim.

Keçikê jê re got; tu ê jê re bêjî, sicadek wîna hene, û xîzeranek heye, jê re bê ka bide min, şêr bi ya wê na kir çû cem mîrê cina.

Mîrê cina gote wî: lawê min çi işê te heye, got: ez dixwazim tu izna min bidî ezê herim welatê xwe. got: ev qencîk mezin bi me kir, û me xelefa wê qenciya te, me dernexistiye hê... bixwaze bê te çi divê.

go: bêje tiştekî dî jî, ezê bidime te.

go: besê mîrê min, ma min çi qencî bi te kiriye, mi divê ez qenciya xwe nas bikim.

Mîrê cina jê re got: ewê mî rê cina ê ko te kuşt, he roj fêrî skî min û yekî wî bi dorê diçûn hev, hetani ko fêris ne man, dora min û a wî hat, me ji hev re got: heqê me li ibada tu ne, lazim ez û tu em dakevin hev li meydanê, heger te ez kuştim miletê min hemi ma ji te re, û heger min tu kuşt, miletê te ji mi re ma.

Em daketin hev du, û teî dî mêrik ji min xurtir bû, ko ne tu biwa, wê ez bikuştama; ev qencîk mezin te bi me kiriye, em bi rûh û malê xwe li ber te ne.

Şêr jê r' gelekî dilxweş bû, got: bes e mala te ave, ji mi re bêjê, lê işê vê secadê çawa ye? Mîr jê re got: honê secadê deynin erdê, her du li ser rûnin û xîzeranê xwe lêxînin, kê der dilê we bixwaze we bibe wê derê.

Şêr xwatir ji mîr xwest, ser sicadê xwe rûniştin, go: em dixwazin tu me li şkefta Hût deynî; bi hewa xistin secadê, di bin ez mana re birin, nav ewr û stêra re birin, rastî şkeftê hatin, keçikê ismeki sihrê xwend, Hût bû kevir di şkefta xwe de. Daketin şkeftê cem gulî Pemba, li tenişta xwe danîn ser secadê, şiva xwe lêxistin go: em dixwazin me deynî ba çadira Qemerzeman.

Bi hewa ketin, di bin ezmên re nabiyena avê û stêra rastî çadira Qemerzeman danîn, nêrîn ko Qemerzeman ji qehra re, pir bêhal bûye.

gava çav li wan ket, Qemerzeman kêfa wê pir hat, û jê re got: ya birayê min ê şêr, eva din çi ye bi te re?

go: ev ji ya min e!

Wê şevê man cem hev du bi dil xweşî razan, her kesî di bin çadirê xwe.

Sibehê rabûn, li hespêd xwe siwar bûn, her kesî jina xwe li pişt xwe siwar kirin, meşiyan; ketin çola û xewleciya û meşiyan, qonaxa dûr nîzîng kirin, ketin çolekê xewleçî; ava wan xelas bûye, ji tîna behecîne.

Şêr ji brayê xwe Qemerzeman re got: ya brayê min, çavê xwe li dora xwe bigerîne, hê em tu gunda, şînahîna, em na bînin, em ji tîna helikîn.

Carekî nerîn, devê bîrkê dîn, çûn ser bîrê, kevirek avêtinê, seh nekirin ko av tê heye an tu nîne; go: lazim yek ji me dakeve bîrê, seh bike.

Qemerzeman ewladê bajara ye, ne wêrî dakeve bîrê; jina şêr jê re got: pirsek mi bi te re heyenav beyna xwe û wî de jê re got:

Tu bi ya mi bikî, tu dana, kevîjvê bîrê!

Şêr jê re got: çima ez danakevim? Keçikê got: brayê te ewê di vê bîrê de bihêlê; heger tu di binê bîrê de hiştî, t'ê bi çavê xwe bibînî ko mişkek ji tenişta bîrê wê derkeve, beqek ji aliyê din ew jî derkeve û wê di ser avê re pêlî hev du ve bên, derkevin tenişta bîrê, bi cem hev du bisekinin, wê ji te re bêjin: ya şêr tu bi qedrê Xwedê kî û mezinehiya wî, t'ê rast bêjî kî ji me xweşik e? T'ê bêjî mişk xweşik e, sê cara wê vê sualê ji te bikin, her sê cara t'ê bêjî mişk xweşik e, heger te wilo got wê mişk te xelas ke, ko heger te go beq xweşik e, wê te têxin di bin heft tebekeyên erdê, û tu bi ya mi dikî, tu danakevî bîrê.. emê hêdî, hêdî bimeşin..

Şêr jê re got: kengê brayê min, min di bîrê de dihêle, hevqas qencî mi pê kiriye.

Şêr çû, şerîtek bi xwe ve girêda, Qemerzeman bi şerîtê girt, daxistin binê bîrê; nerî ko bîr tije av e, ban kir brayê xwe, firaxkî ji mi re daxîne, ji bona ko avê tê de bikişînim.

Firax jê re daxistin, av ji xwe re derxistin, heywanê xwe av dan, wan jî av têr vexwar, firaxêd xwe tije av kirin.

Şêr ban birayê xwe kir go: ka şirîtê ji mi re daxîn, ko ez xwe girêdim û mi bikşîne. şerît jê re daxist, xwe girêda, go: de mi bikşîne.

Li wê derê, fikra Qemerzeman xera bû; ji xwe re got: go ez wîna bikşînim, emê tev de herin cem bavê min, wê ji bavê min re bêje; ev namûs hemî mi kiriye, ezê pê pîs bibim. Lazim ko ez wîna di vê bîrê de bihêlim, ezê ji bavê xwe re bêjim ev tişt hemî mi kiriye, û jina wî ji xwe re bihêlim.

Li wê derê şerît qetand, brayê xwe di bîrê de hişt.

jina birayê wîna giriya, ev çi bû te kir, tiştê wiha kesî heta niha ne kiriye. jê re got: heger tu deyin bikî ezê te jî bikujim.

jinik tirsiya, li hespê xwe siwar bûn û meşiyan.

Nav beyna wan û bajarê wan sê saet man e. Nêzîkî bajêr bûn, şivanek dîn.

Qemerzeman ban wî şivanî kir û jê ra got: tu şivanê kê derê yî? şivên jê re got; ez şivanê Emîr Seîd, bajarê zimzimanê me. Li wê derê kêfa Qemerzeman hat û got: şikir ya rebî, ez bi silametî giham mala xwe, ji şivên re got: hermizgîniyê *ji ba*vê min re bibe û bêje Qemerzeman hat, ji xwe re du jin anîne; wê tiştekî mezin bide te,

şivên jê re got: tu derewa dikî, Qemerzeman şêra xwari bû. Qemerzeman jê re sund xwar, jê re go: ez im Qemerzeman, şivan yeqîn kir ko Qemerzeman e, çû cem bavê wî û jê re got: mizginiya min li te, va lawê te Qemerzeman hat, du keçik ji xwe re anîne.

Hakim ma ecêbmayî. Kêfa wî gelekî hat, ji xewlamê xwe re got: hespekî ji min re hazir bikin.

Hesp jê re anîn, lê siwar bû û çû cem lawê xwe.

Lawê wî bavê xwe dî kêfa wî pir hat, destê bavê xwe maçî kir, jê re got; ya bo va jinê min, di bin çadirê de ne, were wan bibîne..

Bavê wîna da pêşiya wî, gava ket bin çadirê û bi çavê xwe gulî Pemba dî, qidûmê wîna şikestin, fitilî ji lawê xwe re got: go hon li vê derê bin, ezê herime bajêr, esker bi merzîqa pê lî we bişînim, ji bona qîmeta we di nav xelkê de çêbibe. Hakim vegeriya bajêr, pênc nefer esker şandin, ji wan re got, herin Qemerzeman girêdin, ji destê wî û ji lingê wî li ser hespekê bişidînin, û bînine vir; bira pîrekên wî li çadirê xwe bimînin, didu ji we nobeta wan, bikin.

Eskera bi ya wî kir, çûn Qemerzeman anîn li ber bavê wîna danîn.

Bavê wîna şîşek anî, û jê re got: ya Qemerzeman, îsal çend sal e min ez bi hesreta dîtina gulî Pemba bûm, sûretê wê li cem min heye, û mi dixwest rojekê hinik ji mi re salixdanê Gulî Pemba bikin, te bi rehetî, te ji mi re anî, kesek li dinyayê tune bû, ko tu ji xwe re bînî; te çû dostika bavê xwe, ji xwe re anî, tiştê wiha kesî ne kiriye.

Emîr Seîd li meclisa xwe re got; go hon der heqa lawê min de çi dibêjin.

Meclisê jê re got, tu zanî, lawê te ye, kuştin û berdan mista te de ye.

Hakim şîşa xwe li bin çavê lawê xwe xist, her du çavê wîna der xistin û xistin berîka wî û jê re got: Işelle, sibehê berê rohnayiyê ezê serê te jêkim.

Wilo girêdayî di Odekê danî, derî lê xelqandin, ew di vî halî de ma. Emê vegerin ser şêr.

Şêr binê bîrê de ma, carekê dît mişkek ji tenişta bîrê derket û beqek, ji aliyê din derket, di ser avê re, di ber wîna re çûn, tenişta hev du sekinîn, û jê re gotin: ya şêr, tu bi qedrê Xwedê kî, t ê ji me re, rastî bêjî kî ji me xweşik e?

Şêr got: mişk xweşik e.

Beqê jê re got: li çavê min binere, û li laşê min binere çiqeysî ez xweşik im; tu bi çi hewayî dibêjî mişk ji te xweşiktir e?

Sê cara sewal jê kirin, ewîna got: mişk xweşik e!

Carekê dît mişk bû xortekî çardesalî, û beq bû qîzek çardesalî û jê re gotin: mala te ave; te em ji wî halî xelas kirin.

*( ne qediya ye )*

# Serpêhatî

Hakimê Heywanan

Şêr, hakimê heywanan te-maman bû. Roviyek xizmetkarê wî bû. Rojekê, rovî jê re go: Şêrê hinermend, Xwedê zane, tucaran, tu bi tu tiştî naê girê dan, û tu naye zeft kirin. Şêr go: çawan, ez bi werîsan tême girêdan; şêr go: de werîs bîne, min girêde. Rovî werîsek anî, şêr pê girêda û derkete derve; ban şêr kir go: Waye piling hate te!... Şêr, xwe veparimand, werîs qetqetî kir.

Rovî, hate keniya go: hakimê min, tu henekê xwe bi min dikî, tu dibêjî, ez bi werîs tême girêdan; wel, t'ê rastî ji min re bêje, bê tu çewan t'ê zeft kirin;

Şêr go: ez bi werîs nayêm girêdan, lê ez bi duhêlan tême girtin, û zeft kirin; here iyarekî nû bîne, û bike duhêl û li laşê min bigerîne, û lep û lingên mi bişidîne, tucara, ez nikarim xwe vekim.

Rovî iyarek anî û şêr girêda; çû derve go: piling hat!...

Şêr xwe li hev qulapt kir gi xwe veke, wî ew girêdayî hişt û çû. Rovîkî din hat, go: çima tu girêdaye?!..

Go: Roviyek hebû, navê wî Îso bû, ez girêdam.

Rovî go: ma tu dixwazî ez te vekim.

go: belê!..

Rovî, duhêlê li şêr gerandî bû, kurisandin û şêr vekir.

Şêr pirsî: navê te çi ye? Rovî go: navê min Pîso ye! Şêr go: ez nemînim li wî welatî gi Îso mere girêde û Pîso mere berde.

Hirç û Rovî

Carekê ji caran, rehmet li bavê guhdêran:

Li gora adêtê ku dehbin kovî, li çiyan digerin; rovîk jîr, bi serê latekê ket û li bin xwe nihêrî; dît ko vaye hirçek, xwe daye beroj û razaye.

Rovî rîpek anî bala xwe, û kevirek biser hirçê de gindirand.

Hirç bi tirsek mezin ji xew çeng bû û baz da; hinek çû û li pişt xwe mêze kir ko rovî ye, li ser zinar e, û got: wey, wey!... mamê rovî tu wî...

Rovî got: ez benî, min henek bi te kir.

Hirçê got: belê, were mêze ke; ev tirs û avêtina rîxa reş yarî ye; min jî qebûl e, çiqas tu bê şerm î; û hirçê bera roviyê çûn da.

Di bezdanê de, rovî di nav du darên teng de derbas bû, hirç jî dikir li pê derbas be; ji ber ko hirç girs e di nav her dû daran de ma û rovî ji par re hat û baz da ser hirçê û got: hon hirç, heya di xwe de ne bînin, bawer na kin.

*Ibrohîmê Seyda*

Mar û Rovî

— Biratî bi rastî —

Carekê mar û rovî bûbûn destbrakê hev; hatin ber çemekî. Mar go: bira, ez nikarim bi avê xim, mi divê tu min hilgire û min ji avê xelas ke.

Rovî go: were, te hilgirim. Mar avêtê ser pişta xwe û da nav, heta ko giha nîvê avê. Mêr xwe li stoyê rovî şidan, hate bifetise.

Rovî go: bira t'ê çi bikî? Mar go: welle, ezê te bikujim. Rovî go: ka, her du çavê te î reş maçî bikim û dû re tu min dikujeji...

Mar xwe li stoyê rovî sist kir, serê xwe bire ber devê rovî, devî serê wî kir û kuşt, derxiste ser kendalê çem, û mar li erdê dirêj kir, go: biratî bi rastî.

Tel—Erbit: Emîn Hecî Mehmûd

# Fermandarên Mezin

*Dû fermandarên mezin hene û heta îro ji wan çêtir ne hatine dîtin.*

*Yek ji wan Anîbal e; ji xelkê Kartacayê bû û şerê Romayê kir; ê din Napolyon Bonapart e;*

*Ewripa xitsi bû destê xwe, keti bû Qahire û Moskovayê.*

*Ji xelkê Korsîkayê ye, frensiz e. Siltanê rohelatê ê mezintir Selahedîn e; erdê rohelatî ji êrîşên biyaniyan azad kirin.*

*Selahedîn kurê Kurdistanê ye.*

*Ronahî û Deng*

*— Ronahî, ji dengî leztir diçe, ji ber vê yekê berî roniya bruskê tête dîtin û bi dû re guregurê wî tête bihistin.*

*— Felsefe û mentiq bi destê yewnaniyên kevin hatine danîn; û feylesofên pêşin ên mezin hemî yewnanî ne.*

*— Di heqê hikmeta Xwedê da wan gotiye: me seh kir ko em nikarin seh bikin; me dît ko em nikarin bibînin.*

## *BALAFIRÊN RÊWINGIYAN*

Piştî şerî. 1000 balafirên emerîkanî, ji bona çûn û hatina rêwingiyan hifirin.

Di van 1000 mekînan de, 36.000 peya bi cih dibin

Balafirin hene ko 20 peya dikarin lê siwar bibin; mekîneyine din hene ko 40 û heta pêncî peyan hildigrin; û ev mekîne hemî ji tîpên adetî ne.

Berî sala 1940-î, di riyen eme rîkanî ên hewayî de 359 balafir dişuxulîn.

*Fidakariyê Mezin*

*Ji destpêka şerî û heta îro, ji lekên emerîkanî, ên bej û av û hewayî 1.036.937 segman û serbend ji qiwet ketine, têde 239.533 kuştî, 628.353 brîndar, 49.590 windabûyî hene; ên mayîn ketine destê dijmina û bûne hêsîr.*

*Di şerî Okînawayê de 8.252 segman û serbendên emerîkanî hatine brîndar kirin û 1.781 heb jî winda bûne, kes nizane li kû ne.*

*Xesarên japonî têde 117.046 kuştî û 10.578 hêsîr in.*

# MIRÉKA CIHANÉ



*Ji ibadetgehên Norviçe der erdê Norfok.*

*Avahî û ibadetgehên ko di vê awayî de ne, ji texlîtê gotîk in. Awayê gotîk ji Îl-de- Fransê derketiye, ango ji axa Frensê. Di sedsala 12 û heta 16- an de awahiyên gotik gelek rewneq da bûn Ewripayê.*



*Xwendegah û zanîngeh ev in du stûnên miletekî ê xurt û qaim.*

*Bergeheke Çeleng ji ya Zanîngeha Oksfordê.*



*Keçebav sovyetî bi palayiyê mijûl in.*

## Çap û Nivîsar

KITÊBÊN NÛ

Di vê dawiyê de, ser Kurd û Kurdistanê sê kitêbên nû hatine belav kirin û her sê ji bi zimanê erebî ne. Nivîsevanên di van Jostê heq û rastiyê ne; bi awakî xweş û bê meyildarî kitkitên pirsa nijadê me xistine pêş çavên xwendevanan.

Ev in nav û nîşanên van:

Kurd di Sûriye û Libnanê de. Bi qelema nivîsevanê hêja û diktorê felsefe û zanînên civakî Dr. Edîb Mihewed.

58 rûpelên vê kitêbê hene. bihayê wê 100 qirûşên libnanî ye, heçî ko vê kitêbê dixwazin peyda bikin: nav nîşanê nivîsevan ev'e: Milk Debis; Tarîq abdil basit- El- F'axûrî. Bêrût- Libnan.

Kurdistan an Welatê Kurdan. Bi qelema nivîsevanê qîmetdar xwediyê - rojnama Atra, Mîrza Yûsif Malik.

44 rûpelên vê kitêbê hene. Bi hayê wê 100 qirûşên libnanî ye. Peyda kirina wê bi destê nivîsevanî çêdibe.

Navnîşanê wî:

Mîrza yûsif Malik—Sandûq El-Berîd 857; Bêrût-Libnan.

Pirsa Kurdistanê

Di nav bira duhî û îro de. Bi qelema nivîsevanê guzîde û diktorê fêlsefe û zanînên civakî.

Dr. Edîb Mihewed. 46 rûpelên vê kitêbê hene; bihayê wê 100 qirûşên libnanî ye.

Navnîşanê nivîsevanî:

Mîrza Dr. Edîb Mihewed; Milk Debis; Tarîq Abdil-basit El-Faxûrî; Bêrût-Libnan.

## Roja Azahiyê

—çarê tîrmehê, Sala 1776—

çarê tîrmehê sersala roja azahiya Emerîkayê ye; di vê rojê de, li sala 1776-an Emerîka giha serbestî û serxwebûnê û zencîrên bindestiyê şkênandin

Vê rojê miletê emerîkanî bangînek belav kiriye; têde gotinên jêrîn ên ronak û giranbiha hene: hemî mirov mîna hev û du ne, û aza û serbest in, û hin heqên wan ên bingehîn hene ko ne dikarin bêne dayîn û ne jî standin. Mirov, ji hêla heq û kevnedariyê mîna hev in; ne kêmî hev û du ne.

Heqê her kesî ye ko ji bona xweşî û kamiraniya xwe bixebite; hero b zanîn û ma'rifetê bigehe halekî çêtir.

Ronahî, zanîn, pêşveçûn, xwendegah û zanîngeh, azahî, serbestî biserxwebûn, bext û namûs,.vên û xebat, qelsxistin, û kambaxiya zorkerî; ev in armanca mirovan; ev in armancên ko ji bona selametî û pişt xurtiya wan, di nav 30 salan de Emerîkayê du caran şerê zalim û zorkeran kiriye.

Qencî, xweşî, rahetî û dewlemendiya hemî însanan; azahî û serbestiya hemî miletan: eve Armanca Ci hanê; Armanca hemî nijadên dinyayê; çi biçuk, çi mezin; çi reş, çi spî; çi zer, çi gewir.

## ME BIHISTIYE

— Heta niha 350.000 eskerên emerîkanî ji Ewripayê xwe hilanîne û berê xwe dane welatê xwe.

— Hikûmeta elemanî zêrên xwe di bin erdê de veşarti bû; leşkerên Hevalbendan, piştî ko erdê germanistanê vegirtin, ev zêr, heke ne bi timamî, kom pey komekê peyda kirin. Di vê dawiyê de, ji nû ve 4.500 kîlo zêrên elemanî, ketine destê emerîkaniyan.

— Tirs dijminê mezinahiyê ye. Ji Xwedê pê ve ji tu kesî metirsin.

Ko tirs ket dilê ve, bidin eqlê xwe, ko ji mirinê xirabtir tiştekî nikare bigihe we. Ma mirin tiştekî xirab e. Tiştê ko emrê Xwedê ye, ne xirab e.

Ji xwe mirin her heye.

Pêxemberên Xwedê jî jê xelas ne bûne. Zû an dereng, emê rojekê vê badînê vexwin.

Pêşiya tu kesî de, xwe pîs û piçûk me kin; bînin bîra xwe ko hon kurd in.

Kurd bi mêranî û mêrxasiya xwe nav û deng dane.

Ji xwe pêxemberê me — rehmet û silava Xwedê lê bit — du tişt diecibandin: mêrxasî û comerdî.

Dibêjin can şîrîn e; tiştên jorîn bîne bîra xwe, tu seh bikî ko navekî pak û mezin, ji can şîrintir e; Can diçe, mirov dimire, mal winda dibe; lê navekî mezin her û her dimîne.

Gava ez bi xel[illegible]re xeber didim û ew seh dikin ko ez kurd im; ji kîcan aliyê dinyayê be, peyayê ko bi min re daxê ve, hema dibêje:

O! em dizanin kurd çavsor û mêrxas in.

Hindik axaftin, lê kirin, ziravî û nezaket, lê dilekî pola; bê zirt û fort; mêranî û mêrxasî; comerdî û kubarî,

—Mihendizekî rûsî balafireke nû çêkiriye ya ko di saetkê de 800 kilomêtran diçe. Bi vê balafirê, rêwingî di nav heft saet û nîvan de, dikarin ji Parîsê herin Nû-Yorkê.

—Zanayên rûsî isûlek peyda kirine û pê mirovê ko bi derba elektrîkê miriye, ji nû ve sax dikin.

—Di erdê Polonyayê de, 3.500.000 cuhî hebûn; elemana ew kuştine; niho di erdê polonî de bi tenê 100.00 cuhî mane.

—Diktorekî ingilîzî dermanek peyda kiriye yê ko ji silfetoyê çêtir û xurtir e.

## PÊJINÊN DINYAYÊ

### Xebat - Fidakari - Serfirazî - Serdesdî





Jinên cihanê ên çeleng û dewlemand, gava ciline nû dixwazin, li Parîsê dinêrin. Rob û qeftan, guhar û gustîlk, gerdenî û sol û serpûşên spehîtir, jê derdikevin.

## XURTIYA XEBATÊ

— Par, karxaneyên emerîkanî 30.889 gemî, 17.565 tang, 595.330 kamyonên eskerî, .824 topên giran 7.454 topên sivik, 152.000 agir û guleavêj, 1.146.774 ton cebilxaneyên topan û 753.000 ton kewçûkên sentetî çêkirine; ango bi awayê kimeyewî.

— Karxaneyên frensizî Otombileke nû çêkirine ya ko sed kilomêtran de, bitenê 4 lîtir banzîn dişewitîne.

— Wezereta emerîkanî a şerî dide zanîn ko karxaneyên emerîkanî bi çêkirina balafira cihanê a mezintir mijûl in. Ev mekîne 61 mêtir dirêj e, 6 motorên di wê hene û dikare 10.000 mêtir dilind bikeve.

Ji bona balafireke hinde mezin, bi hewa re 10.000 mêtir bilind ketin, tiştekî neditî ye. Di vê balafirê de 204 peya bi cih dibin.

3ème ANNÉE LUNDI 30 JUILLET 1945 NUMÉRO 61

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél. : 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur-Propriétaire : EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 25 P.L.S. - Abonnement :
Liban-Syrie 25 L.L.S. Etranger 4 L. Stgs.

UN PROBLÈME A L'ORDRE DU JOUR

## LE KURDISTAN

Le problème du Kurdistan ressemble singulièrement au problème polonais. C'est le problème d'un peuple, fier, brave, belliqueux, sachant défendre sa liberté au prix de son sang, mais qui a eu le malheur de mal choisir sa place entre de puissants voisins.

Quand on a un seul puissant voisin, c'est un moindre mal : le pays est conquis ; mais, il demeure une entité, capable de lutter en bloc pour son indépendance. Le malheur est d'être disputé et partagé entre plusieurs voisins. Quelle vitalité ne faut-il pas alors avoir pour conserver son âme intacte !

Le Kurdistan a eu cette vitalité, et il a conservé son âme : c'est pourquoi, son problème se pose de nouveau.

Le Kurdistan — qui n'existe aujourd'ui que de nom et d'âme — comprend le territoire habité par les Kurdes entre le Mont Ararat, Diyala, affluent du Tigre, et le Kara-Su.

Sa superficie est de 500.000 K' environ et sa population, de quelque 8.000.000 d'habitants. Il est entièrement partagé entre ses grands voisins : l'Iran, la Russie, la Turquie et l'Iraq.

En Iran, les Kurdes occupent les régions de Kirmanchah, Khoï, Maku etc. En dehors de ces régions, ils vivent à l'état de colonies isolées. Leur nombre y est de 3.000.000 environ.

En Turquie, les kurdes occupent les frontières turco-iraniennes, surtout autour du lac de Van. Ils y comptent quelque 3.500.000 habitants.

En Iraq, ils comptent un million d'habitants et vivent surtout dans l'ancien willayet de Maoussil, où ils jouissent d'nne certaine autonomie.

En Russie, à Erivan et à Kars, ils sont au nombre de 125.000 âmes environ.

Rappelons enfin qu'en Syrie, notamment à Alep, dans le Nord des Alaouites, et à Damas, des colonies de Kurdes sont depuis longtemps établis et comptent actuellement quelque 150.000 citoyens.

### UNE HISTOIRE MOUVEMENTEE

Si l'histoire — et les gloires passées, et les exploits ancestraux — pouvaient avoir sur les destinée des peuples l'effet que l'on se plaît à chanter, les Kurdes seraient aujourd'hui, non la proie du plus fort, mais les maîtres de l'Orient. Hélas ! l'histoire repose dans ses archives silencieuses ; et les valeurs actuelles dirigent seules le monde.

2.000 ans A. C., un peuple nommé Gutu ou Kiti occupa la région du Tigre moyen et s'étendit dans toutes les directions. Une autre peuplade, appelée Kassites, descendit à Babylone des Monts Zagros et la gouverna pendant 600 ans : ce sont les deux ancêtres des Kurdes.

Ancêtres brillants, mais dont l'histoire reste confuse jusqu'au 6ème siècle, par une bizarrerie étrange : les Kurdes furent appelés par les autres peuples de noms si divers (Kardu par les Assyriens, Gortukh par les Arméniens, Carduchi, Gordse, Cyrti par les Grecs) que pour éclaircir tout ce qu'ils en disent, on a encore bien des efforts à dépenser.

Du VIIème au IXème siècle, ils subirent l'occupation arabe. Mais lorsque le Khalifat s'établit à Bagdad, ils disposèrent parfois en maîtres du gouvernement. Au XIIème siècle, des troupes kurdes combattirent les Croisés sous les ordres de Saladin. La puissance kurde atteint alors son apogée.

En 1514, vint l'occupation turque, Sélim 1er confia le pays kurde (indépendant en fait) à Mullah Idris, un kurde de Bitiis, Mullah transféra des Kurdes parmi les Arabes et des Arabes parmi les Kurdes pour convertir ceux-ci à la foi sunnite. Mais, en dépit des égards manifestés aux Kurdes par les Turcs, la sympathie des Kurdes resta acquise à l'Iran.

Avec le XVIIème siècle, le drame du Kurdistan commence. Ce peuple orgueilleux, qui avait combattu les Hittites, les Assyriens, les Mongols, qui avait absorbé les Mèdes et les assyriens déchus, va être baloté entre ses puissants voisins au gré de la fortune des armes. Durant trois siècles, les guerres se suivront d'abord entre la Turquie et l'Iran, ensuite entre la Turquie et la Russie, au grand détriment des Kurdes.

Vers 1650, la Turquie réussit à réoccuper toutes les provinces kurdes et entreprit une centralisation générale. Les Kurdes se révoltèrent. En 1666, un Kurde, fils de Cheikh, se déclara mahdi (ça fait toujours bien). Emprisonné, il reconnut qu'il travaillait pour «Grand Kurdistan».

***POÈME KURDE***

## *L'hameur d'un archer*

*Au jardin d'amour où naissent les fleurs des rêves,*
*Où la rose blanche rit comme l'écume sur la grève,*
*Où les âmes fanées rajeunissent leurs splendeurs,*
*Où tes cœurs rient de leur éternelle candeur,*
*Où tout est jeune, où tout est frais, ou l'âme est sincère,*
*Tu m'apparais souvent sous des formes bizarres,*
*Amante incomparable, oh bien-aimée si rare.*
*Comme un aigle farouche qui plane sur les rochers.*
*Comme les yeux du serpent sous les herbes cachées,*
*Comme une source qui jaillit du fond de la terre,*
*Comme un enfant trahi, délaissé par sa mère.*
*Comme la bouche fumante des montagnes cruelles,*
*Et l'âme sans pitié d'une affreuse criminelle.*
*L'émotion des vents qui soufflent sur les montagnes,*
*La nostalgie d'hiver qui pleure dans la campagne.*

---

*Comme l'âme perfide d'un poisson amer,*
*Comme une vague libérée des fonds de la mer,*
*Comme une langue de lion sur la chair qui bouge,*
*Comme un tigre qui souffre sous sa blessure rouge.*
*Comme des larmes qui brûlent sans mouiller les yeux,*
*Comme des flèches cruelles qui dorment dans les cieux.*
*Nostalgie du désert errant vers le vert,*
*Souffrances des poètes qui meurent dans les vers.*
*Blessure, souffrance, amertume, frénésie,*
*Mal d'amour qui chante la poésie.*
*Comme une herbe affaiblie sur la pente d'un rocher,*
*La mélodie qui tombe de l'humeur d'un archer.*
*Un parfum qui soupire dans un jardin lointain,*
*Comme un soleil qui meurt sans créer le matin.*
*Et parfois, je te vois, douce comme une mère,*
*Parmi les violettes et les oranges amères.*

Au XIXème siècle, à la faveur des guerres russo-turques, les Kurdes s'étendirent peu à peu en Russie avec laquelle, ils sympathisaient.

Ils sympathisaient également avec leurs voisins chrétiens, les Arméniens. Pour contrarier ces sympathies, Abdul Hamid organisa en 1890 des divisions de cavalerie kurdes, rattachées à lui, et qui devinrent une cause de terreur générale. Ces Kurdes privilégiés retardèrent considérablement le développement de la conscience nationale parmi les Kurdes. Ils créèrent des sentiments de malveillance entre les Arméniens et les Kurdes.

Mais, en 1909, après la chute de Abdul-Hamid, la cavalerie kurde fut supprimée. Beaucoup de ses chefs allèrent diriger brillament leur peuple. Des députés kurdes à la Chambre et au Sénat turcs défendirent la même cause.

En même temps, cercles et journaux kurdes étaient fondés à Constantinople, à Bagdad, à Mossoul, pour cultiver et répandre la langue maternelle.

Cependant, alors que les Kurdes travaillaient à leur union, les grandes puissances (par application du principes de la liberté des peuples à disposer d'eux-mêmes !) étaient en contestations sur la part qui leur revenait respectivement du Kurdistan.

Le 17 novembre 1913, un protocole de délimitation fut signé à Constantinople et une commission quadruple (Turquie, Perse, Angleterre, Russie) réussit à délimiter les frontières en satisfaisant, du moins momentanément, les parties en cause...

### LE KURDISTAN DURANT ET APRES LA GRANDE-GUERRE

La guerre de 1914-1918 donna aux Kurdes l'occasion de reprendre leur lutte pour leur indépendance. Ils n'avaient aucun intérêt direct dans la guerre. Cependant, dès le début du conflit, ils s'insurgèrent au Caucase et en Mésopotamie et souffrirent de lourdes pertes. La victoire ne devait-elle pas apporter à tous les peuples opprimés la réalisation de leurs rêves

*(suite en page 2)*

Après la victoire, des comités kurdes se formèrent partout. A Paris, Chérif pacha prit le rôle de représentant des Kurdes. Le 22 mars 1919 et le 1er mars 1920, il présenta à la conférence de la paix deux mémoires sur les revendications des Kurdes, avec une carte du « *Kurdistan intégral* ».

Le traité de Sèvres de 1920 prévoyait « *l'autonomie totale pour les régions où dominent l'élément kurde, situées à l'Est de l'Euphrate, au Sud de l'Arménie et au nord de la frontière turco-irakienne.* » Si, dans les limites indiquées la population kurde veut à la majorité être indépendante et en est jugée digne (condition fort importante), elle formera un Etat Kurde indépendant. Pourront même s'y joindre les Kurdes de l'Etat de Maoussil.

Le traité de Lausanne (entre les Alliés et la Turquie) ne mentionna pas le Kurdistan.

Et 1925 fut pour le Kurdistan — et pour les principes libéraux — une année de grande épreuve.

La S.D.N. adjugea le Maoussil à l'Irak.

En février, une révolte kurde éclata sur les sommets du Moyen-Taurus. Cheikh Said triompha d'abord, mais fut bientôt écrasé par les troupes régulières turques.

Les Turcs établirent une cour martiale à Diarbékir, qui condamna à mort Cheikh Said, Dr. Fouad et 60 leaders kurdes. Des chefs kurdes furent transférés en Anatolie.

L'héroïsme, les traités, les principes, le droit avaient été impuissants contre cette petite chose qu'on appelle la force.

### L'AVENIR DU KURDISTAN

Aujourd'hui, les Kurdes se redressent de nouveau et réclament leur indépendance. Que fera-t-on de leurs doléances ?

Les Kurdes sont un peuple vigoureux, uni, ambitieux. On dit qu'ils ont été des Zoroastriens, et qu'ils ont, au IIIème siècle de notre ère, adoré des arbres et sacrifié au diable.

Actuellement, ils sont en majorité sunnites et en minorité chiites. Bien que certains parmi eux parmi eux pratiquent le nomadisme, et le semi-nomadisme, les Kurdes ont une tendance générale vers le sédentarisme. Ils se sont montrés d'habiles cultivateurs, et par là ont dominé dans le Nord de l'Iraq, l'élement arabe bédouin. Dans le HANDBOOK publié par le Foreign Office, il est dit : « *Northern Mesopotamia seems destined to becom Kurdish land.* »

Et les Kurdes agissent activement pour faire valoir leurs revendications et rester en contact les uns avec les autres.

Ils ont plusieurs journaux et revues dont *Kurdistan*, publié dès 1902, *La Jurnée Kurde, Le Soleil Kurde, La Vie, Progrès, Résurrection.* Mais quel sera l'effet de tant de qualités si la volonté des grandes puissances est indifférente ou malveillante ?

Comme pour tous les petits pays, l'avenir du Kurdistan dépend en partie de sa volonté de vivre — et en partie du destin et des grands courants politiques.

Mansour CHALLITA

# Saladin et Richard Cœur-de-Lion

Le contraste entre les rois arabes et chrétiens au siècle des Croisades ressort d'une façon frappante de l'histoire de deux hommes : ils se combattirent sans parvenir à se vaincre, ils finirent par s'entendre, et leurs noms sont passés, avec une gloire égale, à la postérité. Il s'agit de Richard Cœur de Lion et du Sultan Saladin.

Un continent et un océan séparaient les lieux de naissance de ces deux hommes, de race et de religion différentes. Cependant tous deux étaient des soldats et des chevaliers nés ; ils se montrèrent égaux en culture, en rang et en aptitudes, quand ils se rencontrèrent en un bref conflit. Leur personnalité différait par contre encore plus que leur race et leur religion, et avait été entièrement déterminée par leur éducation.

Le fils du roi d'Angleterre devint dès l'âge de quinze ans, duc français ; il avait été élevé en vue du pouvoir ; il s'énorgueillissait de ses magnifiques prouesses de chevalier et fut très tôt amené, en sa qualité de prince d'un pays plus ou moins étranger, à prendre part a une conspiration contre le roi de France La conspiration découverte, le Prince fut humilié, puis pardonné et réinstallé dans ses droits. A l'âge de dix-huit ans, il sauva son suzerain de la rebellion d'un autre comte. Il combattit son frère aîné, qui d'Angleterre, avait jalousement suivi la carrière de ce frère cadet : à la mort de celui-ci, il devint, à l'âge de vingt-cinq ans, prince héritier du trône d'Angleterre et de Normandie. Son ardeur ses talents, ses espoirs le poussèrent, comme un guerrier insatiable, à la recherche d'émotions nouvelles Comme il était aussi un troubadour, un poète et un musicien, il se lança à la poursuite de la gloire sous la forme double de l'art et du combat.

A la même époque, le fils d'un Kurde, général et gouverneur, d'humble origine, commençait sa carrière, avec un plan de vie inspiré par un enthousiasme profond, et formé par des années de patience et de réflexion silencieuse. Nous ne possédons malheureusement aucun portrait authentique des deux hommes, mais seulement un sceau de Richard et une miniature de Saladin, tous deux extrêmement flous. Nous en sommes, par conséquent, réduits à reconstituer leur physionomie par les descriptions qui nous en sont restées. Nous imaginons la figure passionnée, nerveuse et impétueuse du Croisé à côté du Kurde silencieux, froid et obserteur, le premier paraissant plus cruel que le second.

Le nom de «Sula-ud-din» signifie «fidèle à sa foi» et exprime la profonde religiosité du Musulman. Le nom de «Cœur de Lion» veut montrer la force des sentiments. Les deux étaient des surnoms et faisaient par conséquent, partie de la personnalité des deux héros : l'un étant dévoué à Dieu, l'autre à ses passions. Le fils du roi fut élevé au milieu des tournois et prouesses des chevaliers qui semblaient porter Dieu en même temps que les couleurs de leur dame, comme un ornement sur leurs armures. La Bible ne devait pas signifier grand'chose pour Cœur-de-Lion. Saladin, élevé à Damas, centre de la culture islamique, porta le Coran sur lui toute sa vie.

Saladin haïssait les Chrétiens mais il les traitait en philosophe. Cœur de Lion ne haïssait par les Musulmans, mais il les massacrait. Chez l'Oriental ce fut la sagesse qui l'emporta ; chez l'Occidental, ce fut le tempérament. Selon les idées courantes, c'est Cœur-de-Lion qui aurait pu être appelé Oriental.

Le royaume latin de Jérusalem ne pouvait se maintenir au milieu du monde arabe qu'en raison des dissensions des dynasties musulmanes, entre les califes de Bagdad et les Fatimites du Caire. C'est pourquoi Saladin, général du Calife, devait vaincre d'abord les Egyptiens s'il voulait supprimer l'îlot chrétien. Il y parvint au bout d'une lutte de dix ans qu'il mena avec beaucoup détermination et une persévérance tout orientale. Cœur-de-Lion dispersa son énergie dans des cen-

# Le Roi du Kurdistan
## roman épique kurde (*Suite*)

### II

### Comment Kegan était partie à la Croisade

Les guerriers d'Occident connaissaient de semblables pensées. Certaines avaient même chez eux provoqué des débats.

La Croisade avait demandé pendant des semaines et des mois, une longue préparation dans le royaume d'Occident sous la direction du Roi, et avec la collaboration des châteaux. Richard trouvait difficilement dans cette agitation, un moment favorable pour parler à sa fiancée de ce qui tourmentait son cœur. Ce grand guerrier dont les exploits avaient rempli les années, gardait un cœur naïf de héros. De doux rêves d'amour emplissaient son âme.

Un jour, revenant du jardin et débouchant dans le couloir du palais, il avait rencontré Kégan. Or un amour terrible le poussait depuis cinq ans, vers cette princesse, sans qu'il ait jamais pu dominer sa passion.

Le chevalier eut l'impression, ce matin, que Kégan avait une physionomie avenante et le geste encourageant. Il la prit par la main et plongeant son regard dans les yeux profonds de la jouvencelle, il pensa : comme il sera difficile de conquérir cette jeune fille !

Les aïeux de Kégan dormaient dans des lits reposant sur les couronnes des rois vaincus. On l'avait bercée des exploits des hommes de sa lignée, L'histoire de sa famille était l'histoire même des gloires de son pays. Elle n'avait jamais oui dire qu'un de ses aïeux eut été vaincu. Or, pour la première fois, on mandait que les armées dépêchées par le trône venaient d'être battues. Kégan aimait la vie la beauté et l'amour, mais ce qui touchait le plus son cœur était l'amour de son pays, l'orgueil, la conscience de la valeur de sa race et la lumière que répandait la possession de la plus grande couronne d'Occident.

Beaucoup de valeureux guerriers souvent, avaient pensé, en la voyant aux côtés du roi son père, à pied ou cheminant à cheval, que d'elle l'on pouvait beaucoup attendre. Quoiqu'encore jeune fille, elle ressentait pour son pays l'immense amour que seule une mère peut éprouver. Malgré qu'elle eut un cœur tendre, elle n'avait jamais témoigné de répugnance à marcher parmi les cadavres des ennemis sur les champs de bataille. Et ses petits pieds avaient déjà foulé du sang humain. Malgré qu'elle eût vu à peine dix-neuf printemps, de nombreux princes des royaumes voisins avaient déjà demandé sa main. Elle choisit pour fiancé Richard qui, à défaut d'être de très haut lignage, avait une grande noblesse de cœur.

Richard, éprouvé par huit guerres, avait été quatre fois blessé. Il avait apporté lui-même les lauriers de ses exploits au Roi en personne Mais malgré toute l'estime que Kégan éprouvait pour Richard, elle repoussait l'idée d'un mariage immédiat, se contentant de demeurer fiancée. Elle différait le don d'ellemême jusqu'au jour où serait effacée la tâche apporté au drapeau national par la récente défaite. Elle voulait pouvoir célébrer en même temps le festin de son mariage et celui du triomphe.

* * *

En rencontrant Richard dans le couloir du palais paternel, Kégan fixa avec ténacité les regards du jeune homme. Reconnaissant dans les yeux du guerrier, que l'amour et le désir projetaient vers elle leurs flammes, elle le crut plus épris d'elle que de son devoir, et que l'amour faisait oublier au jeune homme une honte militaire récente. Et elle en éprouva infiniment d'amertume. Mais elle se tut.

De sa main fine, elle écarta le chevalier et gagna le jardin.

Le soir, comme elle s'assit aux côtés des son père, celui-ci lui fit part du désir exprimé par Richard :

# Usifê Tenbûrvan

Hebû hakimek û sê lawê xwe. Hakim rojek ji roja di xwe fikirî û go: ez pîr bûme, û ev lawê di xwe, min ne ceribandine; bikêrtên ew na yîn.

Rojekê ban lawê xwe ê mezin kir, jê re got: lawo, heger ez mirim, piştî ko ez bimirim tu brayê mezin î, tu ê bibî hakim li ser bajêr; tu ê çi edaletê bimeşînî?

Lawê wîna jê re got; go heçî ta'dayiya li mi bike, ezê t'adayiya lê bikim, heçî qencî bi mi bike, ezê qenciya pê bikim.

Hakim jê re got: here û ban lawê xwe ê navê kir; ev xeber jê re got: ewê jî wek brayê xwe ê mezin lê vegerand.

Hakim ban lawê xwe ê biçûk kir, navê wî ûsif e, ev xeber jê re got, ûsif li bavê xwe vegerand: heçî xerabiyê bi min bike, ezê qencîkê pê bikim, heçî qenciyê bi min bike, ezê sê qenciya pê bikim; hege ez herim qehwa, ezê xesareta ehlê qehwa hemo bidim.

Bavê wî destê xwe li pişta wîna xist, û jê dilxweş bû û jê re got: sibehê ez dixwazim, ez û tu herin seyranmîşê.

Sibehê her yekî hesbek ji xwe re derxist ji tewlê, hakim û lawê xwe ûsif, meşiyan bi çolê de.

Ji sibehê heyanî êvarê meşiyan, ûsif ji bavê xwe re got: tu dixwazî me bibe kî derê?

Bavê wîna jê re got: ev va gihane qonaẍa xwe.

Nêzîkî qesrekê bûn; gihane ber qesrê, hakim giha ber dîwarê qesrê û ji qesrê re got: derî veke!

Derîk ji qesrê vebû, çûn hinduroyê hewşê; ûsif nêrî ko hewşa qesrê bi zîv resîf kiriye, sola xwe ji lingê xwe kir, bavê wî lê nêrî ko sola xwe ji lingê xwe dike, jê re got: çima tu sola xwe ji lingê xwe dikî, go: ya bo, eyb e, ji me re ko em bi qonderê pê li zîv bikin.

Bavê wî jê dilxweş bû, kêfa wî gelekî hat, çûn hinduroyê qesrê, nêrîn ko du text tê de danîne; her yekî ji wan li ser textekî rûniştin. Nêrîn ko şîva wan hate ber wan, kesî di qesrê de na bînin, ûsif ma ecêbmayî.

Wê şevê razan, sibehê hakim ji ûsif re got: tu çi bixwazî ji dinyayê, ev qesir wê ji te re hazir bike; de rabe emê îcar herine mal.

Nêrîn ko hespê wan şidandî hazir bûn. Li hespê xwe siwar bûn, hakim ji qesrê re got: ya bimbarek, nefsa me ez bêm, derî ji mi re vemeke, heya ko ne ev lawê min ûsif bê, derî ji tu kesî re veneke!

Hatine mal, çend rojekê man, hakim nexweş ket, ji miclisa xwe re got: heger ez mirim lawê min, yek ji malê mehrûm e.

Çend rojan ma, hakim mir.

Piştî ko mir, lawê di wîna bihevdu ne kirin, her yek ji wan ji hev re dibêje, tu mehrûm î, kes ji wan nizane, ko kî mehrûm e.

Yekî ixtiyar di meclisa wan de heye, ji wan re got: ev îş kesik nikare, safî bike, ẍeynî Zerîfa keçka şêxê ereba.

Her sê rabûn û çûn mala şêxê ereba; konaxa sê roja meşiyan.

Gihan mala şêx, li bin konê wî rûniştin, adeta ereba heye, heyanî sê roja, ji mihvanê xwe na pirsin. Piştî sê roja, ji wan re got: hon bi çi îşî hatine? Hewala xwe jê re gotin, şêx ban qîza xwe kir, û mesele jê re got: Keçikê go: ev îşê min.

Keçikê ban brayê mezin kir, jê re got: ez qîz bûm, di mala bavê xwe de bûm, lawê apê min heye, ez dixwestim, bavê min ez ne didamê ye, dilê min zehf li cem wîna bû, û ê wîna jî li cem min bû.

Rojekê yekî tacir hat, bin kohnê bave min û ez xwestim ji bavê min, xurcikek zêra ji bavê min re vala kir û di wê şevê de, ez siwar kirim û ez birim gundê xwe; mehra min birî û ez xistim Odakê, êvarê hat Odê cem min, nêrî ko ez digirîm, ji min re got: çima tu digirî; tu ji min çêtir î, heger tu poşman bûyî, ezê te bibim mala bavê te.

Mi jê re got: ez ne poşman im, feqet dilê min, bi halê lawê apê min dişewite; ko xebera wî çêbibe ko te ez xwestime û birime, wê xwe bikuje.

Gava ko ev xeber bihîst ê tacir, ji min re got: tu li min heram bî, û li lawê apê xwe helal bî.

Ev pereyên ko mi da bavê te, qelenê lawê apê te, hesabekî mi tu ji wî re anî; here cem lawê apê xwe; ko bi min re hat heyanî nîzîkî gund û vegeriya çû; ez hatim mala lawê apê xwe.

Gava lawê apê min ez dîtim kêfa wî pir hat, û ji min re got hewala te çi ye, min jê re hewala xwe got; ewîna jî go: madam ê tacir wilo şîr helal e, tu jî li min heram bî, here vegere cem ê tacir.

Ez çûn cem ê tacir; heke tu ê tacir bûna, te xurcika zêra bi min bidana, te ê ji nû ve ez vegerandama, ji lawê apê min re?

Kurê hakim jê re go: erê, ma insanetî ne maye?

Go: tu here, ban brayê wîna ê navê kir û jê re got: heke tu lawê apê min bûna û ez wilo bihatama cem te, te ê cardî ez bibirama ji ê tacir re?

Go: erê, qencî qenciyê nas dike! Keçikê ji wî re jî got tu here; ban ê biçûk kir ûsif; û ev xeber hemî jê re got; go: heke tu ê wek tacir an wek lawê apê min bûna, ez a wilo xweşik bi destê te kevim, te ê ez berdama!

Ûsif jê re got: na, çawan dilê min li te hebe û ez te berdim, ezê xwe bidime kuştin, û ez nahêlim tu ji cem min herî.

Keçikê go: baş e; ban her du brayê wîna kir û ji wan re got: brayê we ê biçûk, mehrûm e ji malê.

Her sê lawê hêkim vegeriyan, hatin mala xwe; du sê roja man, brayê xwe bi der kirin ji mal. Qesir bi bîra ûsif ne hatiye, ji xwe re di nav bajêr parsê dike, gelekî perîşan bû, çi mala ko diçiyê, jê re dibêjin here, heger tu baş bûna, brayên te tu bi der ne dikirin.

Rojekê li ber dîwarekê rûniştiye, û bi halê xwe de digrî, qesra wîna hat bîra wî, rabû ser xwe û ji bajêr bi der ket, heyanî êvarê gihaşt qesrê, qesrê re got: ya bimbarek derî veke!

Derî jê re vebû, çû hinduro, nêrî ko va hemam, germ e, av û sabûn hazir e, xwe şûşt, nêrî ko bedlek cilê milûkî hazir bû jê re; cilê xwe li xwe kir, hat nêrî ko textek hazir e, li ser textê xwe rûnişt, şîva wîna hate ber wî, şîva xwe xwar, û serê xwe danî û raza.

Sê roja di vê kêfê de ma, piştî sê roja, ji xwe re go: ezê rabim, herim, ber bi brayê xwe de.

Nêrî ko hespek jê re hazir bû, zihn û gemê wêna, hemî zêr in. Bi ser pişta hespê ket û berê xwe da bajêr.

Her du brayê wîna jî, poşman bûne û digirîn û dibêjn, çawan me brayê xwe bi der kir; bîst xulam li mala me hene, ew jî weke wana bûna, û eyb e ji me re, ko brayê me parsê dike; li brayê dipirsin, saẍlixî wîna hilnanînin; ew dibê, qey hina kuştiye; dorbînê wana li ber çavê wîna ne, li ser riya dinêrin.

Carekî nêrîn ko siwarek ji wê ve tê, şewq ji wî siwarî diçe, ewana go: qey belkî siltan hatiye bajarê wan, her du lawê hêkim pêrî wî siwarî ve çûn, serê hespê wîna girtin, û anîn, banî xistin jor, hespa wî kişandin tewlê, her du lawê hêkim lê dinêrin û digirîn.

Ûsif ji wan re got: çima hon digirîn? jê re gotin: brakî me hebû, bavê me ew ji malê mehrûm kiri bû, û me ew bi der kir, û em poşman bûne, û em lê digerin, em wîna na bînin; tu di şiklê wîna de ye; me li te nêrî, brayê me hat bîra me û em giriyan.

Ûsif ji wan re got: heger hon brayê xwe bibînin, hon nasnakin? gotin: belê, heger tu niha ne di vî şiklî de bûna, menê bigota tu î.

Ji wan re got: ez brayê we me! Kêfa wan pir hat, û jê re gotin: ya brayê me, ev mal ji te re, ji kû? ûsif ji wan re got: ez di nav bajêr de bûm, min ji xwe re pars dikir, yekî cuhî, ji min re got: were cem min bişuxile, ez pê re çûm, mi nêrî ko malê wî zehf e, û mi ê cuhî kuşt û ez di mala wî de rûniştim.

Her du brayê wî jê re gottin: lazim, emê sibehê hêrin, li mala te bifericin.

Sibehê her sê rabûn, li hespê di xwe siwar bûn û berê xwe dan qesrê û meşiyan; heyanî êvarê meşiyan gihane ber qesrê, nêrîn ko derî di qesrê de vebû ji keviran.

Gava her du brayê wîna dîn, ko hewşa qesrê timam zîv e, nêrîn ko sê text ji wan re hazir bûne, şîva her siya, her yekê bitenê, hat ber wana.

Her du brayên wîna mane ecêbmayî; û ji hev re gotin: lazim, sibehê em wîna bi xwe re bibine çolê û em bikujin û em vê qesrê, ji xwe re bihêlin; ev qesir ji bajarê me hemî çêtir e.

Sibehê ji brayê xwe ê biçûk re gotin: em dixwazin herin nêçîrê. Brayê wîna got: bila be, her sê sîwar bûn e hespên di xwe û meşiyane, heyanî êvarê, rastî şkeftekê hatin. Her du brayêd di mezin gotin: emê îşev di vê şkeftê de razin, ûsif ji wan re got: hon bi ya min dikin, em di şkeftê de ranazin.

Her duya go: belê, emê razin, û di dilê wan de, ko brayê xwe ûsif bikujin, di şkeftê de.

Her diwa a xwe kiriye yek û bihortin hindurê şkeftê, û ûsif bi wan re.

Carekê nêrîn ko derê şkeftê li wan hate girtin, nêrîn ko hûtek di devê derî de ye.

Ûsif şûrê xwe kişand û çûyê, bi şûrê xwe li wî hûtî dixîne, çiqa lê dixîne, tiştekî pê na be.

Hût ji wan re got: ez canpola me, ji niha heta sed salî, hon li min xînin, tu t'adayî bi min na be; şertekî min heye, heke hon bikin, honê xelas bin, heger hon ne kin, honê bimînin di şkeftê de, heyanî ko hon bimirin. Brayê mezin, go: şertê xwe ji me re bêje. Hût go: şertê min, ezê lingê xwe ji hev bikim, honê di nav lingê min re derbaz bibin, herin ji der ve.

Brayê mezin go: ez hatim, hût lingê xwe ji hev kir, û brayê mezin di nav lingê wî re derbaz bû, hût çirek mîz, bi pişta wî de berda, heft destê goşt, ji laşê wî hilandin. Heft parsû, di laşê wî de şkênandin, heft rihê mêraniyê ji pişta wî qetandin, mala wî xira kir.

Di fikra brayê navê de, ko brayê wî ê mezin xelas bû, ewî jî go: ez hatim. Hût çirek mîz bi wî jî berda, ew jî ket halê brayê xwe, her du jî, ji der ve lihevdu rast hatin, hevdu nas na kin, tiştê ko bi serê wan hatiye.

*ne qediya ye*

## *Metbelokên kurdî*

Hek ker bi nefs e, mistek ceh bes e.
Asasê ser berfê.
Xalxal ji midara, spî ji qerpala.
Mêranî hebe, di kevir da ye.
Ji xwe re tenûrek sax bihêlin.
Kêvroşk ji çiya na tirs e.

# Stranwarî

## Der Warè Stran û Dîlanan

### ZEMBÎLFIROŞ

Hati bû ser xênî carek
Mi dî bû rûyê bimbarek
Mi goti bû kêf û halek
Ya xanim ez hêsîr im.

Zembîlfiroş lawikê dewrêş e
Kerem ke were pêşe
Heqê zembîlê bibêj e
Ez ji hizna te bûm kher û gêj e.

Gul Xatûn, ez tobedar im
Hurmetê, ez bi erz û eyal im
Zaro birçî ne, li mal in,
Ez ji rebê jorî ni karim.

Xatûna gerden bi morî
Şixul na be, bi kotek û zorî !
Sînga mi, berfa zozana
Memikê min, mîna fîncana
Were bibe xeyra te tê
Îşaleh, tu herî cunetê.

Lê, lê, lê lê, Xatûnê
Bejna te ji dara zeytûnê
Tirsa min ji agirê Eytûnê
Gul xatûn, ez tobedar im
Hurmetê, ez bi erz û eyal im
Dereng e, li min êvar e,
Zaro birçî ne, li mal in
Tirsa min ji Xalikê cebar e.

Zembîlfiroş zembîla tîne
Li sûk û bajara digerîne
Xanim li bircê dibîne
Eqil dere, sewda dimîne
Goşt dere, hestî dimîne
Rûh dere, qalik dimîne.

Zembîlfiroş lawikê feqîr e
Tu were ser doşeka mîr e
Binêre li zulf û herîr e
Li min heram be, li mîr helal be.

Gul Xatun ez tobedar im
Hurmetê, ez bi erz û eyal im
Zaro birçî ne li mal in
Dereng e, li min êvar e
Ez ji rebê banî nikarim
Zembîlfiroş, lawikê ebas e
Bi tena derpê û kiras e
Ji Xatunê na be, xelas e

Zembîlfiroş, lawikê rewan e
Geriya dikan bi dikan e
Xanim ban kir dergevan e
— Wî bîne hewşê
Derî bigirin
Miftê bînin ban e.

— Hatûnê, lê, lê hurmetê
Agirè Xwedê bi serî ketê
Tu ji min dixwazî meslehetê
— Tu were bike xeyra te tê
Xwedê kerîm e
Heya roja qiyametê !

Gul xatûn, ez tobedar im
Hurmetê, bi erz û eyal im
Zaro birçî ne, li mal in.
Dereng e, li min êvar e
Ez ji rebê jorî ni karim.

Xatûna, li ser wî banî
Dengkî ba kir dergevanî
— Miftê bîne, wer banî
Kes bi halî kesî ni zanî.

Gul xatûn ez tobedar im
Hurmetê bi erz û eyal im
Zaro birçî ne, li mal in
Dereng e, li min êvar e
Ez ji rebê banî ni karim.

## Te d'bînim

Te d'bînim te na bînim lê gewrê
Dest li gerdenê wer tînim cana min
Aşiqê çavê şîn im, esmera min
Qîza ji xorta distînim delala min
Tirsim bimrim ne bînim cana min

Daketî ser kaniyê
Şar berda ser paniyê
Mi ramîsanek jê xwestî
Ev heqê cîraniyê delala min.

Riya Eyin-Tirbê bi qaş e
Paçê Zeko qimaş e
Hek hon Zeko nas na kin
Ereq vexwar serxwaş e
Tu dî bû, li ber dîwêr e
Ez ji bejnê ne bûm têr e
Mi ramîsanek jê xwestî
Tirsa min ji kûçikê mêr e.

### ŞEX NEROZ

Şêx Nerozo tu zanî
Ker vayî, kurtan kanî
Şêx Nerozo, dongızo
Kurtanê kerê şêx dızo !
Ey Naroz, Naroz, Naroz
Kerê reş, kurtanê boz.
Ar tûtik, bervar tûtik
Şêx Zîlanê, dûv rûtik.

## Qumrî

Qumrîkê ez gune me
Şivanê bavê te me
Aşiqê bejna te me
Ebdalê çavê te me
Ez goriya serê te me.
De yar, yar yar, de yar yar yar
Bête xewka min na yê.

Qumrîkê ser bi zêr e
Sing dergehê bajêr e
Qumrîkê na dim mêre
De yar, yar yar, de yar yar yar
Bête xewka min na yê.

Qumrîkê bi zêr helandî
Keçik lawik revandî
Serê li bavê gerandî
De yar, yar yar, de yar yar yar
Bê te sebra min nayê.

Qumrîkê ez gune me
Delalê ez gune me
Esmerê, ez gune me
Ez şivanê bavê te me
Aşiqê bejna te me
Ebdalê çavê te me
Ez goriya serê te me.

## Kejê

Tu kej î, tu kej î
Dilê min ketî te jî
Çogê min şkestin
Nikarim herim, mala xwe jî.

Bejna Keçikê
Tayê tirincê
Diranê mehrûmê
Heba birincê

Destê, çavreşê
Dermanê qolincê.

Weleh bileh tu kej î
Dilê min ketî te jî
Çogê min şkestin
Nikarim herim, mala xwe jî.

## MEMIR

Memir, Memir, Memir
Mamîto lo..
Mamo ji xursê tê
Mamîto lo..
Bihna gula jê tê
Mamîto lo...

Memir, Memir, Memir,
Lo, mamo lo,
Xelkê dosta te bir
Lo mamo lo..
Xwelî li serê te kir
Mamîto lo
Xwelî li qehfê te kir
Rebeno lo...

# MIRÉKA CIHANÉ



*Sereya Sansûsî, di Potsdamê de ye, Kralê elemana ê mezintir Frîdrîk ev qesir ji xwe re ava kiri bû. Di Pêvoka Potsdamê de serekên Hevalbendan çûne dîtina vê avahiyê. Serekwezîrê brîtanî ê berî M. Çorçil di hindurê qesrê de ye, û li qesrê û li esrex û li wêneyan dinêre.*



*Jin û dotên axa Ewripa vegirtî, yên ko di destê elemanan de, keti bûn belengazî û şerpezeyiyê têne derman kirin, pora wan qirêj e û têde spih jî hene. Diktor û nesaxnêrên svêçî bala xwe didin van. Xelkê Ewripayê, ji jin û dotên ko nesaxa derman dikin û li wan dinêrin, xwîşk dibêjin*



*Serekwezîrê Brîtanya Mezin ê nû M. Atlî, piştî xelaseka pêvo voka Potsdamê, ji Berlînê vegeriya ye û haliye payetextê brîtanî. Serekwezîr di nav kolanên Londrê de bi rê ve diçe.*



*Serekwezîrê brîtanî ê berî, M. Çorçil, di nav kavil û xirbeyên payetextê elemanî de. Zehf taxeyên Berlînê bi derbên bombeyên Hevalbendan tar û mar bûne. Serekwezîr nemaze bala xwe daye xesarên dijwar, yên ko giha bûn qesra serekwezareliya elemanî, ko têde qerara vî şerî a xedar ji aliyê Hitler ve hâti bû dayîn û bi perîşanî û zîvariya nijadê elemanî qediya ye.*

# ME BIHISTIYE

— Generalê emerîkanî, Corc Keney, serfermendarê qiwetên Hevalbendan ên hewayî li Rohelatê Dûr gotiye: wextekî nîzing de, hero 5000 bombeavêj û kelehên firok ên emerîkanî bi ser axa japona a mader de, bigirin û ji hêla jêrîn ve, 5000 ton bombeyên şewat û teqandinê bavêjin, hêjagehên eskerî û yên destxetan, mîna karxaneyên çek û posatên şerî, febrîqeyên top û tang û balafiran, destgehwapor û gemiyên şerî, bender û qerargehên stola japonî û kar û barên di wan..

— Mehkema Mareşal Peten di Parîsê de çêdibe; tometa Mareşal eve ko wî dixwest awayê cimhûriyetê rake û ji aliyê din destdaye dijminên welatê Frensê û arîkariya wan kiriye.

Peten gotiye hakima: ev mehkeme ne xwedî selahiyet e ko li doza min binêre û ez li pirsên we venagerînim; û mîna gotina xwe kiriye û di pêşyia mehkemê de, devê xwe venake.

— Mirov ne hewceye ko zehf sinhet û destxetan bielime; bes e ko destxet an siheteke wî hebe lê divê di karê xwe de şehreza be. Dibêjin ko ingilîzek hebû, xwedî neh sinhet, lê nikarî bû jina xwe bixwedî bike; ingilîzekî din hebû xwedî sinhetek; lê karê xwe xweş dizanî û dikarî bû neh jinan bixwedî bike.

— Gotina ko ji devê te derneketiye, xulamê te ye; û tu dibî xula mê gotina ko ji devê te derketiye. Beriya ko tiştekî bibêjin zehf bala xwe bidinê; ko we got qediya; divê soza xwe n'êxin erdê.

— Zaroyên xwe me tirsînin, ko we ew tirsand, dibin derewker. û yê ko derewker e, tirsonek e; û yê ko tirsonek e, zehmet e ko bikêrî tiştekî bê.

— Heke we neheqî kir, zû izra xwe bixwazin; heke heq destê we de ye, tu caran dev jê bernedin û têde pê bidin erdê; yê ko neheqî kiriye divê bişûnda here; heke we wilo ne kir, û riya neheqan ne birî; qedrê we nayê girtin û dawî hon perîşan û şerpeze dibin.

*— Îsal, di Erjentînê de, 2.500.000 ton genim çê bûye.*

*— Karxaneyên frensizî îsal 2.000 balafir çêkirine. Balafıra frensizî a mezin « Latekoer-631 » dest bi firînê kiriye. Di wê de 40 rêwingî bi cih dibin; ev 72 ton giran e, 6 motorên di wê hene, hemî bi hev re 7.840 hesp xurt; 36 ton bar hildigire, di saetkê de, 350 kilomêtir difire.*

*— Şeş mehên vê salê ên pêşîn de, karxaneyên sovyetî, yên şekirî, karê xwe, çak pêk anîn e. Di erdên azad kirî de, zehf karxaneyên nû hatine çêkirin. Di axa Ukranyayê de, berî şerî 160 febrîqeyên şekirî hebûn, û van febrîqan, di salê de, 140.000 ton şekir çêdikirin.*

*Elemana 29 hebên van xira kirine û mekîneyên 30 hebên din jî, bi xwe re kirine. Di sala 1944-an de 72 karxaneyên şekirî dest bi xebatê kirine.*

*— Di Svîçreyê de, par 1372 febrîqe cil û kiras, derpî û gore çêdikirin. Ji van febrîqan 44 heb, dev ji xebatê berdane, lê 79 febrîqeyên nû hatine danîn û van dest bi xebatê kirine. 311 febrîqe ji pembû 121 febrîqe ji hevrûşimê û 95 febrîqe ji giyan cil û derpî û kiras çêdikin. jê pê ve 180 karxane ji kiriyê qimaş û cilan çêdikin.*



# PÊJINÊN DINYAYÊ

**Xebat - Fidakari - Serfirazî - Serdesdî**





*Kenser nesaxiyeke gelek dijwar e, pê her sal, bi hezaran mirov dimirin. Zanayên frensiz gelek bala xwe dane vê nesaxiya xedar. Sala dawîn, çend zanayên frensiz di Parîsê de, bi awakî nûjen, desî bi dermankirina kenserê kirine. Xebata zor, ya ko di vê dawiyê de hatiye kirin, berine hêja daye û saxkirina vê nexweşiyê de, gavine pehin hatine pêş ve avêtin. Wêneyên jorîn, xebata zanayan pêş me dikin. Kenser di zehf derên bedenê de çêdibin, li ser zimên, li rûviyan, li ûrê, li qirikê û lihin cihên din.*

## Yar Sînemê!

Taq rêhana li mergeo
Tu b'tenê me çe avê o
Dest avêtê gerdenê
Xweşîn ketî naveyo
Dikim Sînem ramîsim
Gune di stoyê baveyo
Yar Sînemê, Sînemê
Hewara rebê alemê
Yar Sînemê, Sînemê
Setara rebê alemê.

Taq rêhana li mêrge o
Tenî me çe helala
Dest avêtî gerdenê
Xweşîn ketî xilxala
Dikim Sînem ramîsim
Gune di stoyê hevala.

Sal— 3 Hejmar — 55

Duşemb 3 — Îlon 1945

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 35 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 4 lîreyên inglîzî. Bihayê Hejmarekê; 25 Qemerî.

# ROJA NÛ

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc: Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74 04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

## Cengê Cihana Qediyaye

Japona jî, bê şert û bazar xwe avêtine bextê Hevalbendan û pê li rohelat û li roavayî, şerê cihanê ê mezin gihaye dawiya xwe. Stolên emerîkanî û brîtanî ketine benderên japonî û lekên Hevalbendan bi piranî derketine axa japona a mader.

Şer, di erdê Rohelatê Dûr de, û li giravên Pesifîkê şerekî zehf dijwar bû; lê zanîn û mêraniya leşkerên Hevalbendan û nemaze yên emerîkanî, pişta japona şkênandin, û Sovyetistanê derba mirinê a dawîn da leşkerên Mîkado. Zorkerên mezin ji dinyayê hatine rakirin û di pêşiya hemî miletên cihanê de, dergehên heq û edaletê vebûne.

Herwekî zehf caran, ji aliyê Hevalbendan ên mezin, hatiye dan zanîn, ev şerê xedar ji bona hikimraniya heq û edaletê û ji bona rahetî û selametiya miletên cihanê û xesma miletên biçûk, çêbû ye. Mêr û mêrxas bi sed hezaran mirine, da ko rayê zorkeriyê ji dinyayê bête hilkişandin, da ko heq û edalet bibe Armanca hemî miletan, da ko hemî miletên dinyayê, ji heq û edaletê, para xwe bibin. Miletê kurd jî di nav miletên cihanê de miletek e. Kurdistan jî, di nav welatan de welatek e.

Îro neh milyon kurd, li Hevalbendên Mezin dinêrin, yên ko zilm û zorkerî pelixandine û miletên Cihanê wê bigehînin heq û edaletê û pê binyadên silh û aştiya Cihanê deynin ser stûnên qaim.

Em, şehîdên riya heq û azahiyê tînin bîra xwe, fidakariyên ko wan camêr û mêrxasan kirine tînin pêş çavê xwe, hemî miletên dinyayê minetdarê van egîdan e, û em ji kûrahiya dilê xwe dibêjin rûhê wan şa be, û Xwedê jin û zaroyên wan gernesan ji renc û ezaban biparêzê.

## Pirseke girane ji yên îro

# KURDISTAN

— I —

*Pirsa Kurdistanê, bi awakî ecêb, bi ser ya Polonyayê ve diçe. Pirsa Kurdistanê ya nijadekî ye ko pozbilind, mêrxas û şerût e, yê ko dizane azahî û serbestiya xwe, bi fidakariyine giran û bi bihayê xwîna xwe biparêze. Lê belê, kambaxiya wî ev e ko ji xwe re, di nav cîranên xurt de, welatek bijartiye. Gava cîranê xurt yek e, xirabî ne hinde mezin e, rast e ko ev cîranê xurt erdê cîranê xwe ê qels distîne, lê miletê bindestbûyî, dikare bitevayî, şerî miletê xurt bike û pê xwe ji destê wî xelas bike.*

*Kambaxiya mezin ev e ko miletek bikeve destê çend miletên xurt, û erdê wî di nav van de, bête par kirin. Ko wilo bû, ji bona miletê hêsîrketî, çavsorî û ciwanmêriyeke ecêb divêtin, da ko bikare heyîna xwe a nijadîn biparêze, û dil û baweriya xwe, ji tada destên neyar bifilitîne. Kurdistanê ev çavsorî û mêrxasî şanî cihanê kiriye, û ji ber vê yekê, dinya ji nû ve bi pirsa Kurdistanê mijûl dibe.*

*Ji Kurdistanê îro bi tenê nav û baweriyek heye. Welatê kurdan ev erd e ko di nav bira Çiyayê Araratê, Diyala, Dicle û Ava-Reş de ye. Mezinahiya vê erdê 500.000 kilomêtir çargûşe ye, û ev ax di nav cîranên wê ên mezin; Îran, Tirkiye û Iraqê de, hatiye par û perçe kirin. Di axa Îranê de, Kurd der erdên Kirmanşax, Xoy û Makuyê rûdinin, û di hin derên Îranê de jî, ji xwe re gund û bajar avakirine. Di Îranê de, 3.000.000 kurd hene.*

*Di Tirkyayê de, kurd sînorên Tirkiye û Îranê de rûniştî ne û nemaze di dora gola Wanê de; û der vî erdî, ji hêla jêrîn ve, 3.500.000 in. Di Iraqê de, milyonek kurd heye; di axa Welayeta Mûsilê a berê de, û ew ji hin heqên xas parmend in Di Rûsyayê de, li dora Rewan û Kars ê 125.000 kurd hene. Dawî. emê bînin bîra xwe ko di axa Suriyeyê de; nemaze li bakurê Helebê, û di Sûriye, Bakurî de, der Erdê Elewiyan û li Şamê 150.000 kurd rûniştî ne.*

### Dîroka Kurdan

*Heke tarîx û dîrok, mezinahiya berê, karên bilind û hêja, yên ko bav û bapîran pêk anîne, li ser qeder û sernivîştên miletekî tehsîr bikirana; her wekî hin bawer dikin û dibêjin, miletê kurd diviya bû ne mîna îro, bibe hêsîrê lepê miletên jê xurtir, lê hakim û axayê Welatên Rohelatî. Lê heyf e ko dîrok di nav kaxezên bê zimên de radikeve, û qedrê her miletî li gora xebata wî a îro tête girtin.*

*2.000 sal, berî Îsa Pêxember, miletekî ko jê re Gutu an Kitî digotin, axa Diclê, ji xwe re zeft kiri bû, û ber bi çar hindavên dora xwe ve, xwe pehin û fireh dikir. Nijadekî din yê ko bi navê Kasît, hati bû naskirin, ji Çiyayên Zegrosê, daketi bû Babîlonyayê û 600 sal hikmî wê kiri bû. Ev her du nijad kal û kalikên Kurda ne.*

*Kal û kalikên hêjo; lê dîrok heta 600 sal piştî Îsa Pêxember, di heqê wan de, hindik dizane.*

*Miletên din, navine dûrîhev li Kurdan kirine; Asûriya ji wan re digotin Kardu; Ermeniyan Gortux; Yewnaniyan Garduxî, gordse an Sirtî. Heta ko tiştên miletên jorîn, heqê kurdan de gotine, xweş bête seh kirin, xebateke zor divêtin.*

*Ji sedsela heftemîn û heta nehemîn ereba erdê Kurdistanê vegirtine. Lê gava Xelîfe li Bexdayê rûdinişt; kurdan carina hikmî hikûmeta wî dikirin. Di sedsala XII hemîn de, leşkerên kurd şerî xwedîxaçan kirine, di bin emrê Siltan Selahedîn de. Di wê wextê de, mezinahiya Kurdan giha bû merteba xwe a bilintir. Di sala 1514-an de, tirkan dest avêtine Kurdistanê. Selîm I, Kurdistan - ya ko xwedî Istiqlal bû— xist destê Mela Idrîs, kurdek ji Bidlîsê. Mela hin eşîrên kurd şiyandin Erebistanê û hin eşîrên Erebistanê anî Kurdistanê, da ko pê, kurd hemî bibin sin-nî. Lê belê, her çend jî tirk qedrê Kurdan digirtin, di wê wextê de, kurd ecem ji tirkan çêtir didîtin.*

Mensûr ŞELÎTA

Xwendevanên Delal ! Roja Nû bê arîkariya we nikare pêve here, nikare Armanca xwe pêk bîne, û li ser riya xebatê bimeşe.

Eve heşt hejmar ên ko derketine, çar bi zimanên kurdî û çar jî bi yê frensizî, ji kerema xwe, roj berî rojekê kiriyariya wê rêkin.

## PÊXEMBERÊ ME

« Rehmet û Silava Xwedê lê bit »

Divê, emê her car, adetên pêxemberê xwe, bînin pêş çavan û li gora taqeta xwe, bidin pey adet û tevgerên di wî ên mezin û qîmetgiran. Pêxemberê me, Cenabê Mihemed gelek ji paqijiyê hez dikir, rû û destên wî ên mibarek, her car zehf paqij bûn û ciline paqij li xwe dikir.

Pêxemberê me, zehf ji zaroyan hez dikir, û qedrê di wan digirt û nemaze bala xwe dida sêwiyan, û ji peyayên ko zaroyên sêwî diezibandin, gelek dixeyidî. Pêxemberê me, ji bihnên xweş, ji gul û gulçîçekan û ji sihên dara hez dikir, û emrî imetê xwe kiriye, û gotiye: gul û gulçîçeka û darên spehî biçînin. Pêxemberê me, ne dixwest rûyê derewkeran bibîne, ji wan zehf aciz dibû.

Pêxemberê me, qedrê mirovên xwedîheq digirt, heq di pêşiya wî de zehf mezin bû û digot: peyayê ko xwedî heq e bi deng û awakî hişk û sar bipeyive jî, guhbidinê, û jê me xeyidin. Pêxemberê me, ji jina hez dikir, qedrê wan digirt û ew ne diêşandin.

Pêxemberê me, zêr û zîvê dinyayê heqîr didît ji xenîmetê ji xwe re parek ne distand, pereyê xwe dida feqîr û belengaza, sêwî û jinebiya, û digot: pêxemberên Xwedê ji bona rêberiya xwe, ji xelkê tiştek na stînin, rehma Xwedê besî wan e.

Pêxemberê me ji mirovên xebatker hez dikir, û dixwest her kes bixebite û bi vê xebatê, nanê xwe bixwe û barê xelkê ne be, ne dixwest bi kîjan navî be jî, hin cihê xwe de, bi tenbelî û tiralî rûnin, bi eqlê xelkê bileyizin, û pereyê wan bistînin û pê îşê xwe biqedînin.

Pêxemberê me bi Qurana Şanmezin pêş me kiriye ko bê destûra Xwedê di axiretê de, kes ni kare, arîkariya kesekî bike.

## Jin û Mêrik

Jin û mêrik hebû; gelek wî zilamî ji jina xwe hez dikir. Jina wî ehlê Xwedê bû, tizbîk kiri stoyê xwe hezar û libik, û pê werdê xwe dikişandin. Mêrik jî, li ber destê zilamekî ji xwe re dixebitî; wî zilamî hero şîva wî didayê û digot, here bila jina te ji te re çêke,

Zilam şîva xwe dibir mal û dihat li sûkê dixwar. Hosteyê wî rojekê, jê re got: kuro ez şîva te didim te, çima pîreka te ji te re çênake. Mêrik ji hosteyê xwe re got: pîreka min, ji ser secadê ranabe û ji mi'r dibêje: ya filan kes, encax, ez mêj û werdê xwe bikişînim, û tu dizanî werdê min gelek in; hezar û libik e; tu here, şîva xwe ji xwe re çêke, ê me, ez şîvê naxwim, dilê min ji cem Xwedê têr bûye.

Hosteyê wî jê re got: malxerab, bi Xwedê jina te bi dost e, wî got: na kengê, jina min tiştekî wilo na ke. Hoste, jê re got: kuro, ka ji te re debenca min, û here binêr jina te kî li cem heye.

Mêrik debance girt û berê xwe da mal; hat devê derî, nêrî ko jina wî zendên xwe hilkirine û hêka diqelîne, ew jî li ber derî ma sekinî, ji xwe re go: emê binêrin çawa ye.

Nerî ko jina wî deh firax xwarin danîn ser sifrê; û dî ko ji dostê xwe re got: kerem bik, were bixwe. Xwarina xwe xwarin, û kêf û henekê xwe kirin. Mêrik jî, li ber devê derî sekiniye, li wan dinêre, nema wî jê diqere.

Debenca xwe kişand û êrîşî ser wan kir her du kuştin; û ji xwe re got: av û axa vî welatî li min heram e. Hat bajarkî wek Diyarbekrê. Hingî feqîr bû û birçî bû, li ber dikanan radizê.

Şevekê polîs lê rast hatin, jê re gotin: kuro, tu li vê derê çi dikî ? go: bavo, ez xerîb im, ez kesî nas na kim; go: xezna siltan vebûye, qey te vekiriye? go: Bi Xwedê, ez belengaz im û ez xerîb im. Polîs rabûn, bi çeplê wî girtin û birin serayê, û lêxistin.

Kurd go: min ne kiriye, lê min bibin bigerînin li nav bajêr, ezê pêş we kim, ê ko vekiriye. Roja înê bû, di ber deriyê mescidê re bihirtin, miftî jî, ji mescidê derdiket, û tizbiyek di destê wî de bû, hezar û libik bû. Go: bavo, dizê xezna siltan ev e. Polîsan jê re got: malxerab, miftiyê islamê ye! Go: bi Xwedê, hon min bikujin jî, ji wî pê ve, dizê xezna siltan tu ne.

Rabûn, birin, cem siltan; miftî, jê re gotin: miftî, te xizne vekiriye! go: bi Xwedê, hayê min jê tu ne. Gotin, va şehdê te heye. Siltan got: rabin, li miftî xin; rahiştin darekî li miftî ket.

Miftî go: eman, bisekinin, bavo mi vekiriye; bes çilo vî zilamî feqîr zanî bû ko mi vekiriye, ez ne dîtime, û min nas na ke. Rabû, siltan ji feqîr re go: çilo te zanî bû, miftî ev xizne vekiriye? go: bavo, jinek min hebû, û tizbiya wî, hezar û libik bû, û di dawiyê jina min bi dost derket; gava min dît ko tizbiya miftî hezar û libik e, mi seh kir yê ko xizna siltan vekiriye ew e.

Brahîmê METÎNÎ

# Ûsifê Tenbûrvan

Brayê wan ûsif di şkeftê de maye, şûrê xwe dileyizîne; û li hût dixîne; dibê bela ez bimirim di şkeftê de, û ez di nav lingê te re derbaz na bim.

Hût jê re got: tu xortekî delal î, çi heqê te li rûhê te heye, ko tu xwe di şkeftê de bimirînî, şertekî min ê dî heye, heger tu bikî, tu ê xelas bibî.

Ûsif jê re got: şertê te ê din çiye ?

Hût jê re got: şertê min ê dî Gulbarîn keçka mîrê cina, tu ê ji mi re bînî, tu ê soz bidî, ezê te xelas kim. ûsif jê re got: baş e, hidûdê mîrê cina pêş mi bike. Hût gote wî: baş e; were bi dû min de.

Canpola pê re çû heta hidûdê cina, û jê re got: ji vir û wilo de ez nema karim bêm, de Xwedê bi te re be.

Ûsifê Tembûrvan, tenbûra wîna pê re ye, çil têl, li ser tenbûra wîna heye, her têlekê çil hawî dibêje, dengê wîna zehf xweş e, meşiya di nav bajarê cina de; li ber dîwarekê rûnişt, tenbûra xwe li ser çonga xwe danî, û lêdixîne û delalê xwe di ber re dibêje.

Ehlê bajêr, heçî dengê wîna dibihîse, dev ji kar û xebata xwe berdide û tê lê diferice.

Bi vî hewayî du, sê roja ma. xeber ji mîrê cina re çû, û jê re gotin: Delo Eliyek hatiye vî bajarî û ehlê bajêr, sûk û dikanên xwe girtine, û şuxlê di xwe hemî betal kirine, û li wî Delo Elî difericin.

Mîrê cina got: ez dixwazim Delo Elî, bê cem min, ev tiştê wiha xweş, lazim em jî bibînin. Yekî ji xulamê xwe şand dû Delo Elî, û jê re got: rabe, mîrê me te dixwaze.

Ûsif rabû ser xwe û bi xulamê mîr re hat, dîwanê; tenbûra xwe li çonga xwe danî û bi wî dengê xwe ê xweş, bi tenbûra xwe re got.

Adeta mîr heye, ew di qesrekê de ye, jina wî, di qesrekê de ye, û keçka wîna di qesrekê de ye, Heyanî ko her sê bi hev re taştî û firavîn û şîv bixwin, bê hevdu tiştekî na xwin.

Ewê rojê mîr xwe ji bîra kir heya êvarê, ne xwarin û ne jina wî û ne qîza wî, ne hatin bîra wî.

Jina mîr, ji cêriya xwe re got: rabe, here, bê çi hewala mîr e, em birçî bûne? Cêriya wî rabû çû, hate dîwana mîr, û nêrî ko tiştekî ecêb, di dîwanê de ye.

Cêriyê ji xwe re got: mîrê me rokê xwe ji bîra kiriye, heger ev Delo Elî bê cem xatûna min, wê ew sê roja xwe ji bîra bike. Bi şûnda cêrî vegeriya, xatûnê jê re got: ya xatûna min, tiştekî êcêb min di miclîsê de dî ye, û jê re qala deng û tenbûra Delo Elî kiriye.

Xatûnê go: de here, bela bê cem me jî; ma kêf ji mîr re divê, ji me re navê. Cêrî çû, ji mîr re got, mîr go: baş e, ji Delo Elî re go: rabe here aliyê malê, cem xatûna.

Delo Elî rabû, û hate cem xatûnê. Rojekê li cem wê jî ma, qîza wêna du roja bê xwarin maye, cêriya xwe şand cem diya xwe go: binêr bê hewal çiye.

Cêriya Gulbarîn hat û vegeriya, xeber anî jê re, û hewala Delo Elî jê re got.

Keçikê go: bavê min û diya min pîr in, û kêf ji wan re divê, ê me, em qîz in, ji me re navê, de here bila bilezînin û wî bişînin cem min.

Cêrî hat, ji wan re got, diya keçikê ji Delo Elî re go: de rabe, here cem keça me Gulbarîn û kêfê jê re bibuhêre.

Delo Elî rabû, û bi cêriyê re hat cem Gulbarînê.

Gava çavê gulbarînê bi ûsif ket, hiş û aqilê wîna çû, û jê re got: de rûnê, tiştê ko tu lê digeriya û ez lêdigeriya Xwedê da me.

Çend roja di wê kêfê de man, ûsif jê re got: wiha na be, lazim, ji me re îşekî tu safî bikî; ez ji bona te hatime vê derê.

Gulbarînê jê re got: bavê min bi qelena, min na de, şertekî wî heye; gelek mîr û beg û axe hatine min û ev şertê bavê min, hilnanîne, ez newêrim vî şertî ji te re bêjim, ev şert tiştekî zehmet e.

Ûsif jê re got: bêje, çi şert e! Gulbarînê go: hemamek bavê min heye li ber avê, dixwaze wî hemama xwe ave bike, her sal ave dike, wextê ko timam dike, teyrik heye, tê baskê xwe li wê hemamê dixîne û ismê sihrê lê dixwîne, hemamê xira dike.

Heçî ko kari be, wê hemamê bisilimîne, wê mi bidiyê, û heçî nikare, serê wî jê dikin.

Ûsif got: ez dixwazim herim, vî şertî hilînim; Gulbarînê jê re got: de here, li dîwanê de du kursî hene, yek zîv e, yek zêr e, heçî xwezgîniyê min e, li ser a zêr rûdinê; heçî bê, ko ji xwe re tiştekî bixwaze, li ser a zîv rûdinê.

Ûsif rabû, çû dîwanê û li ser kursiya zêr rûnişt, mîr jê re got: kuro ev ne cihê te ye, tu Delo Elî yî, tu hatiyî, ezê tiştekî bidime te; li ser kursiya dî rûnê.

Ûsif jê re got: ev cihê min e, ez ji bo xatirê vê kursiyê hatime. Mîr jê re mesela hemamê got, ûsif go: baş e, ez karim vî şertî hilînim.

Mîr hoste berda hemama xwe, ave kirin, roja ko timam bû, ûsif çû li ser pişta hemamê rûnişt, tenbûra xwe li ser çoga xwe danî û dengê xwe ê xweş pê re dibêje.

Ehlê bajêr ji dora hemamê reviyane, û ji hev re dibêjin, wextê teyir bê, wê wî xortî û hemamê berde bi avê de.

Ûsif carekî dî ko teyir hat, û xwe berda bi ser hemamê de, dengê ûsif û tenbûra wî, kete guhê teyir, pir kêfa teyir hat, û di ser serê wî re, baskê xwe kir sî, û guhdariyê lê dike.

Ûsif destê xwe avêt lingê teyir, ji destê ûsif filitî, tiştek ket dawa wî, nêrî ko hingulîskek e, çiqa lê dinêre, li wî hingulîskê, tiştê wiha ne dîye.

Xeber bi mîr ve çû, go hemama te silimî. Bi def û zirna ve hatin pêşiya ûsif, li hespekê siwar kirin û anîn dîwanê, û gelekê jê dilxweş bûne.

Ûsif ji mîr re got: tu li ser soza xwe ye? Mîr go: belê kurê min, rabe here, cem Gulbarînê, mi dayî te, tu dixwazî here, tu dixwazî li cem me bimîne.

Ûsif çû cem Gulbarîn, kêfa wan bi hev du re hat, û jê re got: va diyariyek baş, hingulîskek mi ji te re aniye.

Kêfa gulbarîn hat, ûsif jê re got: de rabe emê herin.

Her yekê li hespekê siwar bûn û hatin hidûdê Canpola.

Canpola bihna wan kir û hate pêrî wan ve; li wê derê ûsif ji gulbarîn re got: hewala min û Canpola ev e; tu ne ji mi re ye, tu ji wî re ye.

Li wê der ma'dê keçikê nexweş bû, dilê wê gelekî bi kul bû. Canpola hat, û rahiştê keçikê ji ser hespê û bihin kir, xwîna wê hemî ziwa kir.

Ji ûsif re got: here muhneta sê roja ji te re ye, piştî sê roja ez te li kî der bibînim, ezê te hikim ax.

Canpola çû şkefta xwe, û ûsif ma bi dilkî kul, ji xwe re gomcalek kola û xwe tê de vedişêre, di miqabilê şkeftê de. Îşê Canpola çiye? Sibehê derdikeve diçe nêçîrê û êvarê tê.

Wexta ko dire, ûsif tê cem gulbarîn, kêf û heneka xwe dikin heya êvarê, û êvarê diçe, di goncala xwe de, xwe vedigêre.

Çend rojan di vî hawayî de man. Rojekê ûsif ji gulbarîn re got: lazim e tu bi hawakî li rûhê canpola bipirsî, binêr rûhê wî li kû ye, ko em bikujin, heger ne wilo be, em jê xelas na bin.

Êvarê Canpola hat, keçik xwe digirîne, Canpola jê re got: çima tu digirî? go: te ez anî me, di vê çolê de bi tenê, te ez danî me; ne kes heye sebra xwe ez pê bînim; ez ji dê û bavê xwe kut bûme, û ez mame ji te re; ez pir aciz dibim, tiştek ji mi re divê, ko ez sebra xwe pê bînim.

Canpola jê re got: te çi divê? Keçikê jê re go: min rûhê te divê. Canpola keniya û jê re got: ruhê min dûr e, ezê ji te re bêjim; rûhê min di qutikê de ye, û ev qutî, di kaba xezalkê de ye, ev xezal di deşta heywana de ye.

Kehnîk di wê deştê de heye, çiqa heywanên wê çolê têne ser vê kehniyê avê vedixwin, ev xezal heya ko heywanik hebe, ew nayê, piştî ko heywana hemî av vexwarin, wê ewê bê ser kekniyê û hêger bihna însana jî bike, wê bireve; û ev xezal tu carî na mire, heyanî ko tîr û kevanek ji sindiyanê baş ji hedadî Diyarbekrê lê keve; û ev sindiyan tu carî na şkê, heyanî ko ne du mû, ji riha min, di bin de bê şewitandin; piştre wê bişkê ev sindiyan.

Îcar ya Gulbarîn, tu li ruhê min dipirsî, kî kare bîne. Gulbarîn got: îcar dilê min rahet bû, gûmana min jê qut bû.

Piştî ko Canpola raza, gulbarîn meqesek anî, çend mû ji nav riha wî qusandin. Sibehê Canpola çû nêçîra xwe, ûsif hat cem gulbarîn, gulbarîn hewal jê re got; e ew çend mûyên riha wî dane ûsif.

Ûsif çû bajarê Diyarbekrê, çû dikana başhedad, li ber dikana wî sekinî, başhedad jê re got: tu çi dixwazî? ûsif jê re got: ez dixwazim tu min li cem xwe bişuxlînî.

Başhedad jê re got: baş e, tu ê çi bixwazî ez bidim te; roja te? ûsif jê re got: ez peran ji te na xwazim, soz tu ê bidî ji min re, heger sindiyanê te şikest, tu ê ji min re, tîr û kevanekî jê çêkî.

Ê başhedad keniya, go: lawo ji xwe re tiştekî dî bixwaze, sindiyanê min tucar na şkê, go: bila, qe, ez vî şertî bi te re bikim.

Li cem ma heft heşt roja, roja înê bi ser wan de hat, başhedad ji ûsif re got: çavê te li dikanê be, ezê herim, limêja înê. Piştî ko çû, ûsif ev mûyên dî, xwe derxistin û di bin sindiyên de şewitandin, sindiyan teqiya; dengê wî çû başhedad hindurê mizgeftê de.

Başhedad hat û gelekî xeyidî û ma'dê wî nexweş bû, piştê saetkê bihna wî fireh bû, ûsif jê re got: soza xwe bi çî bîne, ji mi re tîr û kevanekî çêke.

Başhedad jê re tîr û kevanek çêkir, ûsif çû deşta heywana, li ber kehniyê ji xwe re goncalek çêkir û xwe tê de veşart.

Dinya germ bû, nêrî ko heywan sef bi sef hatin ser avê şêr û piling û rovî û gur û fîl, çiqa heywanên ko hene hatin av vexwarin û çûn.

Ûsif nêrî ko xezala wîna ji wê ve tê; hêdî, hêdî ji xwe re diçêre, û nêzîkî, li avê dike.

Giha ser avê, bihna însana kir, ew xezal reviya, mişwarekî xurt beziya ber bi çolê de; gelekî tî bûye, carek dî vegeriya.

Hat û devê xwe xiste avê, ûsif ji xwe re got: ez vê xezalê li ser avê de na kujim, îro ne bû sibe.

Piştî ko xezalê av vexwar, ji ser avê bi paş de çû, li xwe fitilî û bi stûreyêd di xwe, xwe dixurîne, ûsif tîr û kevan berdayê, xezal kuşt, çû lingê wîna şkênand, ev qutî ji qaba wê bi der xist; anî û hate cem Gulbarîn.

Qutî vekirin, dîtin ko sê qurmik tê de ne, dido kuştin, ma yek, tayê bi qirka Canpola girt; hênî ber bi şkeftê ve tê, ban kir; ez li bextê Xwedê û we me, honê min ne kujin. We du kurm kuştin, yekî bihêlin, heyata min winda me kin.

Ûsif dixwest vî kurmê bidiyê, Gulbarîn rahiştiyê û perçiqand. Nêrîn ko Canpola di cihê xwe de mir.

Her du hatin di qesra xwe de man bi dilxweşî; sibehê Ûsif rabû û çû bajêr, her du brayên di xwe kuştin û ma hakimê bajêr. Kurdistanê û serê hazira sax be.

*SILEYMANÊ MERCÎ*

# Stranwarî

## Der Warê Stran û Dîlanan

### Ehmedê Ferman

Êvarekê bi dengbêjê me ê delal Ehmedê Ferman re. Kelamêrê Kîkan, roniya çavan, ixtiyarê civatan, berdevkê maqûl û axan, û berdilê ciwan û xortan.

### Edlê Rabe

Edlê rabe sibe ye
Dengê dîka qebe ye
Kes li mala tu ne ye
Kêf kêfa min û te ye
Deynê min li bavê te ye

Ba rabû, baran rabû,
Ecaca keriyan rabû,
Karika pihoş winda bû
Gundî, malî bela bû
Ez û gewrê pev şa bûn

Çiya li çiya nerî
Werdek ji gola firî
Xwar bûm Edlê ramîsim
Destê min lê nagerê.

Hat karwanê gamêşa
Danî bû li binya êşa
Memkê Edlê digiwêşim
Dilê min ji kerban têşa.

Ha der bû, der bû, der bû
Karwanê Edlê der bû
Hemî hêstir û ker bû
Hemî qantir û ker bû
Hespê Edlê qemer bû
Çekê xorta li ser bû.

Mala Edlê li neqebê
Lê hat bayê xezebê
Derdê Edlê giran bû
Da ser siwarê neqebê
Derdê tolê giran bû
Da ser derdê kezebê.

Lê gidiyê Edûlê
Porsorê, gulê hûrê
Dosta lawikê maqûlê
Wer ser dora tenûrê

Lawik Edlê revandî
Bir xopana Stenbûlê
Lê gidiyê Edlayê
Mi d'pozê bavê gayê
Tu li pê soza xwe nayê.

Qîza şêxê Teyayê
Xilxala ling kutayê
Kember li navê nayê
Bazina dest badayê
Çav ji zêra hilnayê
Çi b'kim malê dinyayê

Ev sibe ye, ro zîz e
Ro li erdê dilîze
Derdê min yeke qîze.

### Kezîzer

Kezîzerê, kezî zer
Kezîze ê lewendê
Sing doşek balif zendê
Zeriyê t'were dîlanê
Gewrê were govendê

Kezîzerê kezî zer
Xulama memkê girover
Serê sor e; binî zer
Mîna berfa nevala
Siya dara tim li ser

Tu j'govendê were der
Te ramîsim car din her
Kezîzerê min sisê ne
Her sê delaliyê dê ne
Yek min, dido xelkê ne

Lo erdiko beyaro
Minê çandî xiyaro
Çi b'kim dosta bi yaro
Esil dosta qîzê ne
Mîna şekir şîrîn e
Mîna agir bi tîn e
Mîna gula bi tîn e.

### Bistkî Wer

Bistkî wer mala me ye
Tişkî bibe mane ye
Singê mi j'te re bexçe ye
Gul û rîhan têde ye.

Meskenê min û te ye
Hey lê gidiyê Nazliyê
Çelebiyê
Xulama deqa li aniyê
Wer'em herin kaniyê
Gundî, maliya çi j'me ye
Diyarbekir bi derge ye
Nisêbînê bi qişle ye
Girherînê bexçe ye
Mêrdînê di ser re ye
Cihê min û te ye
Heval û hogira çi j'me ye.
Îşev şeva berfê ye
Ciya dîne li hewşe ye
Destê xwe, bi destê mi de
Wer'em herin çolê ye.

Îşev şeva baranê
Ciya dîne li heywanê
Destê xwe bi destê mi de
Emê biçin nevalê.

### Gulê, gulê

Kevoka Qitirbilê
Qeymaxê ser satilê
Gul dosta axê minê
Lawê Zeyto j'xwer birê
Bir xopana Mûsilê
Destê xwe kir paşilê
Çi paşilek xweydayê
Serê memika bildayê
Memik para xortayê
Tiştik me tê, ne mayê.

Ez na çim bexçê gula
Ez na rim taxa fila
Lê gulê, gulçîçekê
Çavreşê meşordekê
Rîhana li ser doşekê
Ez rûniştim li kêlekê
Ezê gulê birevînim
Bibim bajarê Siwerekê
Hêçî bi dilê xwe zewicî
Sê ro dizîn ji felekê.

Ez gul im, gulspî me
Nav bexçeya efendî me
Dosta lawikê xwey cindî me.

### LAW OSMANE

Lê yadê law Osman e
Biçûk i tenbûrvan e
Qedrê zeriya j'xwe nizane
Bi vî erdê, bi vî ezmanê
Naçim suxra vî Çaçanê
Ka bazinê te j'mir ani
Ka xilxalê te b'xwer'anî
Lê Dînê, zalim Dînê
Tirsa min j'hebsa Mêrdînê
Ziyareta Kilêbînê
Te lawo bimire, narim şûnê.

Osmanê xerbende ye
Te rêkirî mala me ye
Desmala zer kir mane ye
Singê bê bavê
Mîna berfa li xirbe ye
Êmîşê devê te ye

Nedîn im, ne dirust im
Taq rîhanê, pêlê xist im
Teresbavo
Pişta mi girtin, li erdê xistin
Du parsûyê min ne xuyane
Sê parsûyê min şkestin
Ez ne dîn im, ez ne har im
Taq rîhanê pelê pan im
Pişta mi girtin, li erdê dane
Du parsûyên min ne xuya ne

De lil, de lil, de lil, de lil
Ketim bextê bavê Cemîl
Xodo, rebî, kes tê ne min
Lê yadê law Osman e

# Palas Hotêl

Du rêz têlên bi stirî, dora avahiya ko tê de, mezinên germanistanê ên berê rûniştine, digire. Nobetdar pêşiya van têlan de, diçin û tên. Bi tîpine mezin, li ser texteperçeyan nivîsandiye: «rawestan hindurketin bend e.»

Eve derîzana Palas Hotelê, li Mondorf-le-Ben, li Luksemburgê; Hotela ko nihû girtîgehk e û tê de suçdarên elemanî ên şerî î mezintir rûniştine. Goering, Rozemberg, Sayis-Inquart, Ribentrob, von Papin, Diktor Ley, û emîral Doenitz.

Mareşalên elemanî Keserling û Kaytel, jî, di vê de ne. Lê ev her du fermendar, hêj nayin hesibandin mîna sûçdarên şerî. Di hindurê bexçeya ko Hotêl tê de ye, zehf têline bi stirî ên din hene û gelek eskerên ko nobetdariyê dikin.

Pencreyên hotelê bi dereban hatine qaim kirin, hûr û mûr di hindurê mezelan de zehf kêm in; bi tenê tiştên ko mirov bi vê ne vê, hewcedarî wan in, mîna textek, kursiyek, û cihê şûştinê.

Sûçdar di tebeqa çaremîn de rûdinin. Diktorekî elemanî li wan muqate dibe. Diktor niho Goering derman dike, ye ko bi arsimî ketiye. Goering pir ji Keserling hez dike, û ew dostê wî ê çêtir e.

Goering, zehf ji nesaxiya dilê xwe, gazindan dike. Nobetdarên di wî dibêjin ko ew ji guregurên ezmanan û bruskan ditirse. Hêsîr hemî, dibêjin ko ne nazî ne, û tiştê ko kirine, eve ko emrêndayî, anîne cih, û jê pê ve, tu sûç û qebhetên wan nîne.

Di pêşiya serbend û serhengên emerîkanî de, yên ko ew istintaq dikin, Goering û hevalên di wî, xwe zehf zirav dikin. Rûyê hêsîran qermiçî ne, û westabûna şevên bê xew, jê xuya dike. Ribentrob, zehf li ber halê xwe dikeve û bê etlahî ji nobetdarên xwe dipirse; gelo heqê wî de, çi tête gotin, û gelo kengê wî bête rêkirin pêşiya mehkemê.

Hecî Dr. Ley, xema halê xwe na xwe û heke rê pê ket, ji xelkê re şîretan dike û dixwaze bide zanîn « Elemanya Nû » bi çi awayî divê bête ava kirin.

## Ez Ji Cehnemê Têm

*Feqîrekî kurd hebû, çû bajarê Diyarbekir, ji sibehê heya êvarê geriya, tiştek bi destê wî ne ket, hat ber qesrek bilind ji xwe re sekinî.*

*Qîzek ji vê Qesrê daket, jê re got: ya feqîr tu çi dikî li vê der, tu ji kû tê? Feqîr ji behca xwe re, go: ez ji Cehnemê têm. Qîzê jê re got: tu ji cehnemê tê? go: erê! Qîz banî ket jor, ji xatûna xwe re go: ya xatûna min, va zilamekî li ser rê ye, dibê ez ji cehnemê têm! Xatûnê go: ban ke, bela bê vir! Qîzê ban wî feqîrî kir, feqîr hat cem wê, xatûnê jê re got: ya lawê min, bi rast tu ji cehnemê tê? Feqîr go: erê.*

*— Go: lawê min heye, navê wî Salih e, te ne dî, li wan dera?*

*— Go: ez Salih nas dikim,*

*— Go; halê wî çawa ye*

*— Go: ya xatûn, halê wî pir perîşan e, xwas e, sertazî ye, cilên di wî qetiyayî ne! xatûnê go: ezê peran bidim te, tu jê re na bî? Feqîr nerî ko xatûn xeşîm e, go: ez ni karim peran bi xwe re bibim; îşê min heye, ez hatime îşê xwe.*

*Xatûnê go: ez li bextê Xwedê, û li bexte te me, ezê çar sed zêrî bidim te, tu ê bibî jê re, û deha ezê bidim te, ji te re, heqê te! Feqîr go: de xem na ke, de bîne! Çarsed û deh zer ji xatûnê standin, û ji wî bajarî bi der ket. Êvarê mêrê xatûnê hat; xatûnê ji mêrê xwe re got: Îro yek ji cem Salihê me hatiye, û go halê wî pir perîşan bûye, bi Xwedê, min çar sed zêr jê re şandine.*

*Mêrê wê ma ecêbmayî, go: te çawan pere şandine, ev pênc salê wîna qediyane ko miriye, û tu jê re peran dişînî, bi kû de çû ewê ko pere ji te standine? Xatûnê riya ko feqîr pê de çûye, nîşanî wî da; mêrik li hespê xwe siwar bû û bi dû feqîr de çû.*

*Ê feqîr, bi dû xwe de nerî, ko siwarek bi pey wî de tê; wê çawan bike ê feqîr. Dît ko yekî colkarî, nerî ye ko gurrî ye jî, Feqîr jê re got: Ev siwarê ko ji wê ve tê, heçî mirovên gurrî dibîne, serê wîna jê dike; ê colkarî go: ez çawan bikim? Feqîr go: here li ser vê darê xwe veşêre ezê ji dêl te ve col bikim; heyanî ko ev siwar bibihore.*

*Ev siwar giha cem colkarî, jê re got: kuro te ne dî tu kes di vir re çû? Feqîr jê re bi dizî go: va ye, li ser darê ye. Ew siwar çû di bin darê û ban ê gurî kir go: were dakeve, di fikra wî de eve ko pereyên wîna birine. Ê gurî go: ez danakevim. Ewê siwar ji hespê xwe daket, cizma xwe ji lingê xwe kir, şûrê xwe danî erdê û banî ket ser darê; bi destê wî gurî girt û go: çima ez ban te dikim û tu danayî? Ê gurî go: ez ne guriyê tam im, porê min heye, ji bo çi serê min t'ê jê kî? Ewê siwar jê re got: kuro tu çi dibêjî?*

*Ê gurî go: niha yek ji wê ve hat û ji mi re got: ev siwar serê gurriya jê dike; û ez hatime ser darê û ew ji dêl min ve col dike.*

*Heya mêrik ji ser darê daket, nêrî ko feqîr hespa wî, û cizma wî û şûrê wî jî revandiye û çûye. Bi linga vegeriya mala xwe, jina wî jê re got: te çawan kir? go: mi şûr, û hesp û cezme jî ji Salih re şandiye; bila lê siwar be!!..*

## Kew û Rovî

Roviyek ji xwe re digere li çolê, rastî kewekî hat, xebera kew jê tu ne, kew ji xwe re got: ê ko xewa wî naye, çawan bi derew radizê; ezê xwe biceribînim, kew çavê xwe girt û dikî ko raze, rovî ji par re çû û rahişte kew bi devê xwe re, kew nêrî ko di devê rovî de ye; û ji rovî re got: te ez girtim, ez nesîbê te me, bêje elhemdulil-lah!

Rovî got: elhemdulil-lah, devê wîna vebû, kew firiya, miqabilê rovî danî, rovî ban kire kew go: mala wîna ne ava be, heçî ko birçî be û bêje: elhemdulil-lah. Kew jê re got: mala wî ne ava be heçî ko xewa wî neye û bi derew raze.

Sal— 3 Hejmar — 56 52

Duşemb 24 — Îlon 1945

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê. 35 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 4 lîreyên inglîzî. Bihayê Hejmarekê; 25 Qemerî.

# ROJA NÛ

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc: Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

## KURDISTAN

—2—

*Di sedsala XVII hemîn de, bextreşiya Kurdistanê destpê kiriye. Miletê kurd, yê ko şerê Hitît, Asûrî, û Mongolan kiri bû, yê ko Med û Asûriyên qidretketî, di nav xwe de, helandi bû, êdî diviya bû, li gora siûda şerên cîranên xwe, ji alîkî bikeve alîkî din. Sê sedsal pê de, şerê Tirk û Eceman û di pişt re, cengê Tirk û Ûrisan, xesarine dijwar gihandine nijadê Kurd.*

*Ber bi sala 1650-an ve, tirk hemî erdê Kurdistanê, kêm û zêde, xisti bûn bin hikmê xwe û karên Kurdistanê bi Stanbolê ve da bûn girêdan. Kurd pê qail ne bûne û li Tirkan rabûne. Di sala 1666. de, kurê Şêxekî, bi navê Mehdîtiyê li Osmanliyan asê bû. Dawî ket destê hikûmetê û mukir hat ko qesda wî danîna « Kurdistaneke Mezin » bû.*

*Di sedsala XIX hemîn de, Kurd ji firsendên şerê Tirk û Rûsî, parmend bûne û bi mihacirî ketine erdê Hikûmeta Rûsyayê; ya ko li her dilê wan şirîn bû. Kurdu ji cîranên xwe ên mesîhî û ji filan jî, hez dikirin. Ebdil-Hemîd, bi qesda xirakirina vê dostaniyê, di sala 1890. ji siwarên Kurdan, firqeyine hemîdiye dan çêkirin, yên ko di bin emrê Siltên de bûn; û pê di nav kurd û filan de, tiştên zehf nexweş çêbûne. Ev kurdên hemîdî, pêşveçûna miletê kurd di riya welat û milet perweriyê de dereng hiştine û dijminîtî xistine navbira Kurd û filan.*

*Lê, di sala 1909. de, piştî ji textketina Ebdil-Hemîd, firqeyên kurd, hatine rakirin û serekên kurd, bi awakî çak, dest bi rêberiya miletê xwe kirine û mebhûs û ayanên kurd di civatmiletê tirkî de, û der civatê Osmanliyan yê maqûl û rîspiyan de, ji bona heqên miletê xwe zehf xebitîne.*

*Ji aliyê din, Kurdan di Stanbolê de, der Bexda û Mûsilê rojname derdixistin û civat danîn, bi qesda parastina heqên kurdan û pêşveketina zimanê kurdî.*

*Di wextê ko kurda ji bona vejandina miletê xwe ji bona pêşveçûna nijadê kurd, cehdine mezin dikirin, (û ji xwe li gora qeydeyên danî, milet hemî serbest in û dikarin li gora daxwaza xwe hikûmetekê deynin) miletên mezin bi parkirina Kurdistanê mijûl dibûn û li ser para ko dihate vî an wî bazar dikirin.*

*Li 17-ê çiriya berî, sala 1913-an de, li Stanbolê lihevhatinek hatiye morkirin û kardariyeke çarserî, ji nimînendeyên Tirkye, Îran, Ingilistan û Rûsyayê, bihevketî sînorên Kurdistanê dikişandin, û pê dilê her çar dewletan, kêm û zeydę, xweş dibû.*

### Kurdistan Sala 1914-1918 an de

*Şerê 1914-1918-an, rê dida kurdan, û wan ji nû ve dest bi xebata azahî û biserxwebûna welatê xwe kirine. Ew bi vî şerî, rast bi rast ne bendewar bûn. Lê bi firsenda ko ketiye destê wan emel kirine û li Serhedan û li Kurdistana nîroyî de, li hikûmetê rabûne. Di van şer û qomandan de, xesarine dijwar gihaye kurdan. Kurda xwîna xwe dirijandin, û mîna miletên din bawer dikirin û di hêviyê de bûn, ko azahî û serbestî wê bibe para her miletî.*

*Piştî ko Hevalbendan serfiraz bûne; kurdan li her derê, civai û komîteyine azahî û serbestî wê bibe para her miletî.*

*Piştî ko Hevalbend serfiraz bûne; kurdan li her derî, civat û komîteyine azahiyê danîn. Di 22-yê adarê sala 1919-an û li 1-ê adarê sala 1920-an li ser pirsa welatê xwe, du bîranî qedimandine pêvoka silh û aştiya cihanê, ya ko bi danîna silhê mijûl dibû; di van bîraniyan de, heq û daxwazên kurda yek bi yek nivîsandî bûn, û pê re xerîteyekê ko erdê Kurdistanê pêşçavan dikir, hebû.*

*Bextnameya Sevrê, sala 1920-an, bi danîna hikûmeteke kurdî, mukir dihat; û li gora şertên vê bextnamê, Kurdistana Nîroyî; ango kurdên Iraqê, heke xwestin, dikarin xwe bigihînin, axa mader a bakur û nîvekî.*

*Bextnameya Lozanê-di nav bira Tirkye û Hevalbendan de; Sala 1925-an, ji bona Kurdistanê—û ji bona qeydeyên azahî û serbestiya daxwazên miletan- saleke giran bû, Civatê Miletan Mûsil da Iraqê.*

*Di meha Sibatê de, der çiyayên Tewrosê ên navîn, kurda ji bona azahî û serbestiya xwe, dest avêtine çekê xwe. Şêx Seîd di destpêkê de serfiraz bûye, û zehf bajar û şaristan vegirtine; lê dawî Ordiyên Tirkan, zora wî birine. Tirk di Diyarbekrê de, mehkemeke eskerî danîne, bi qerara vê mehkemê Şêy Seîd, Dr. Fuad, Ewiqat Extî, Yuzbaşî Kemal Fewzî, Seyid Evdil Qadir û kurê wî û 60 serekên kurd hatine bi darve kirin.*

*Mêranî, bextnameyên navnijadîn, heq û edalet, qeydeyên azahî û serbestiya miletan, pêşiya vî tiştê ko jê re qiwet dibêjin, bêmecal mane.*

PÊŞIYA KURDISTANÊ

*Îro, kurd ji nû ve, ji cihê xwe rabûne û bi dengekî xurt, doz û dehwa azahî û serbestiya xwe dikin. Gelo îcar wê çawan çêbibe ? Kurd miletekî zexim, yekbûyî û minêkarî mezinahiyê ye. Tête gotin ko ew di wextê kevin de zerdeştî bûn û berî hemî miletan yekîtiya Xwedê, nas kiri bûn; 4000 sal berî Îsa Pêxember.*

*Niho, piraniya wan sin-nî; û ji wan hin jî elewî ne. Piraniya Kurdan dev ji koçeriyê berdane û gund û bajaran de rûdinîn. Di cotkariyê de gelek hêja û hinerwer in, û pê erdê Iraqa bakurî û bedewiyên têde, xistine bin hikmê xwe. Kitêba ingilîzî, ya wezareta Brîtanya-Mezin a dervekariyê, der vê babetê dibêje: wilo dixuye ko bakurê meyanduava Iraqê wê bibe axa kurdî.*

*Kurd ji bona standina heqê xwe zehf dixebitin û di nav xwe de, yek in û hemî pev re girêdayî ne. Zehf kovar û rojnameyên di wan heye, mîna: Kurdistan Gelawêj, Jiyan, Dengî-Kîtîyî-Taze, Niştiman, Zegroş Kûhistan, Hawar, Riya Taze, Azadî, Ronahî, Kovara Qefqasê, Stêr, Roja Nû.*

*Lê heke dewletên mezin bala xwe ne dan pirsa Kurdistanê an bi dilekî reş lê nêrîn; gelo dawiya vê xebata zor wê çêbibe ?!*

*Mîna hemî miletên biçûk, pêşiya Kurdistanê jî, bi du tiştan girêdayî ye, yek: zexmî û zêrekiya xebata ko kurd ji bona azahiya xwe dikinû didoa: qeder û meşên bûyerên siyasî ên mezin yên Cihanê.*

Mensûr ŞEL-LÎTE

## ME BIHISTIYE

— Sala ko bê karxaneyên emerîkanî çar milyon otomobîla çêkin.

— Panzde hezar eskerên emerîkanî ketine axa Tokyoyê; payetextê japona.

— Sefîrên Brîtanya Mezin, li ba dewletên Rohelatê Nîzing û Navîn, di serekiya wezîrê brîtanî ê dervekariyê de, li Londrê civanek danîne û bi pirsên ko bi van welatan ve girêdayî ne, mijûl dibin.

— Xelkê Sûdanê; erdê ko li nîroyê Misrê de ye, dixwazin karên welatê xwe bi destê xwe bigerînin û naxwazin karkerên misrî û ingilîzî têkilî şuxlê Sûdanê bibin. Xelkê Sûdanê dildikin bi Hikûmetên Ingilîzî û Misrî tifaqnameyekê mor bikin. Piraniya xelkên Sûdanê reşik in.

— Wezîrên dervekariyê yên pênc dewletên mezin di Londrê de civanek danîne. Pênc dewletên mezin ev in: Emerîka, Sovyetistan, Brîtanya Mezin, Frense û Çîn.

— Piştî ko japona xwe avêtine bextê Hevalbendan eşkere bûye ko stoleke emerîkanî a xurt ji bona êrîşa dawîn, xwe kar kiri bû.

Ev stol niho bê şer ketiye avên japona ên mader. Ev in yekîneyên têde: 14 zirehpûş, her yek ji wan 35 û heta 45 hezar ton mezin; 24 balafirhilgir, 22 qriwazorên giran û sivik, 136 destriyor. Hezar û sê sed balafir dora vê stolê de difiriyan.

— Leşkerên emerîkanî ketine Şanghey; bendera çînî a mezin.

— Serekdewletê frensizî, li ser vexwandina serekcimhûrê Emerîkayê M. Truman, çû bû Weşingtonê. Ceneral De gol, niho vegeriyaye Parîsê. Têtegotin; beriya ko ev sal biqede Serekcimhûr Trûman wê bê Parîsê; xatirxwaziya miletê frensizî û ya Ceneral De gol.

— Li gora danazana ko hatiye belav kirin; serekdewletên emerîkanî û frensizî li ser hemî pirsên ko di nav van dewletan de hene, li hev hatine û qerara şidandina dostanî û tevkariya her du hikûmetan, dane.

— Meha borî 270.000 eskerên emerîkanî ji erdê Ewripayê vegeriyane welatê xwe; vê mehê, têtê bawer kirin ko 400.000 eskerên emerîkanî, wê bikarin xwe ji erdê Ewripayê hilînin û berê xwe bidin Emerîkayê.

— Herwekî şer qediya ye û karxane û destgehên emerîkanî dest ji çêkirina çek û sileh û cebilxanan, û hesincawên şerî ên din; mîna top, balafir, bombeavêj û cengkeştiyan berdane, divê xebat bête pêda kirin, xebatkerên van febrîkan re. Di Emerîkayê de 60 milyon xebatker hene û ji van hemiyan re kar peyda kirin ne tiştekî hêsaniye. Hikûmeta Emerîkayê niho, bi vî karê girane zehf mijûl e, û hêvî mezin e ko ev pirs bi awakî çak dê bête safî kirin.

### Keçedînê

Keçedînê tu zanî
Esmer hilû tu zanî
T'ez kuştim, t'ez helandim
Tu b'kurmancî nizanî.

Tu dî bû l'banê banî
Xulama çavê di belek
Reş kir ji kilê sibhanî
Xulama şê biskê di şê

Li ser zilfê danî;
Xulamê cotê memika
Pirtiqalê yafayê
Devê dikanê danî.
A k'mi digo te anî
Sed helal be li wî canî
T'ez kuştim, t'ez helandim
Çavreşê mala mi danî

Ez diçûme, diçûme
Pêrgî gewra xwe bûme
Ew keniya ez şa bûme.

Lê gewrê lêxezalê
Kanî rinda nav malê
Weyla mi memik xwarî
Memik fitara êvarê.
Keçê, dînê tu zanî
T'ez kuştim, t'ez helandim
Tu b'kurmancî nizanî
Esker oldim peyade
Ta'lîm bilmem ne çare
T'ez kuştim, t'ez helandim
Tu b'kurmancî nizanî.

Denizde qum ziyade
Esker oldim peyade
Senî çoq seviyorim
Heyatden de ziyade.
Were keçê vî alî
Tu b'kurmancî nizanî
T'ez kuştim t'ez helandim
Tu helal î vî canî.

### HEJIROK

Ez hejîra na xwim
Loy, loy, loy
Loy li loy, loy loy !
Ez delalê na xwim
Xemrevînokê.

Şerê betal na kim
Tirka li xwe şa na kim
Xemrevînokê.

Hejîr li çiya ye
Li nav gul û giha ye
Li ber serê paşa ye
Ji eslê xwe de axa ye
Xemrevînokê.

Hejîr di tatê de
Delal di tatê de
Lawino biçin pê ve
Mexseda dilê wê ye
Xortxapînokê.

Hejîr çiqa zer e
Wela delal zer e
Lawino biçin ser e
Ji eslê xwe de esmer e
Xortxapînokê.

Wela hejîr xweş e
Wela delal reş e
Li nav gul û benefş e
Evdalê çavê di reş e
Eslê xwe de keleş e.
Xortxapînokê.

*yê ko gotiye: Ehmedê Ferman*

### TITIN

*Ez radibim weqta seher*
*Qelûna min agir li ser;*
*Her nefesê ez dikêşim*
*Defî dike pênc sed keder.*

*Titina misk û ela ye*
*Vedixwit şêx û mela ye;*
*Kê dibêjit titin bela ye.*
*Ew ni zanit lezetê.*

Melayê GERDÎ

## Hakim û Sê Keçik

Hakim, û wezîr rojekê daketin seyranmişê, di nav bexçan de.

Nêrîn ko sê keçik hene ji xwe re dolabê dirêsin. Hakim ji wezîr re got: Emê xwe veşêrin, binêrin be, ev qîz çi ji hev re dibêjin. Keçka wezîr yek jê, yek keçka qadî ye, û a sisiya keçka gavanê bajêr e.

Nerîn, keçka wezîr ji hevalên di xwe re got: go heke hakimê bajarê me ez bikirima, minê jê re mexfûrek çêkirina ko hindurê mala xwe, hemî pê raxistana, û derenceyêd mala xwe, heya bi hewşê...

Keçka qadî got, go: heger ez bikirima, minê jêre balafirek çêkirina ko ew û miclisa xwe tê de siwar bibûna; kî jan dera ko dilê wan bixwesta, biçûna û bihatana...

Keçka gavan got: heger ez bikirima minê jê re du zaro b'anîna, yek qîz û yek lawik, her avdak ji porê wan yek zîv û yek zêr; û hakim dengê wan dibihîsin.

Hakim û wezîr vegeriyan mala xwe, û hakim ji wezîrê xwe re got: here keçka xwe ji mi re bîne.

Wezîr keçka xwe ji hakim re anî û mehra wêna li xwe birî; êvarê gava çû cem qîzikê; jê re got: tu li ser soza xwe yî an na?

Keçikê jê re got: çi soz e! go: te di nav bexçan de got: heke hakim min bike, ezê jê re mexfûrekê çêkim?

Keçikê go: mi derew ji xwe re kir! Ez çi zanim mexfûra çêkim. Keçka qadî jî, bi vî hawayî.

Keçka gavan anî ji xwe re û jê re got: tu li ser soza xwe ye! Keçikê got: heke Xwedê bide, ez li ser soza xwe me.

Sala wê qediya, Xwedê teala du zaro dan keçka gavên; keskê din li cem wê tu ne, her du hewiyên wê pê ve.

Gava her du hewiyên wê dîn, ko keçka gavên soza xwe bi cih anî, pir jê qehirîn, çûn du cewrik anîn û danîn ber wê, her du zarokên wê veşartin. Sindoqek anîn, her du zaro xistin Sindoq li wan girtin, qîr û zift kirin û avêtin behrê.

Çûn ji hakim re gotin: va jina te du cewrik jê re bûne.

Hakim pir qehirî, û çermekî gamêşî anî û jinik xist nav vî çermî û danî ser cadê û emir daye ser bajêr, heçî here û heçî bê tifkê bidin vê jinkê. Di bajarê din de, yekî masîvanek heye, carekî nêrî ko sindoqek bi ser avê re tê; ev sindoq anî û hat cem pîra diya xwe û jê re got: Xwedê da me. Gava sindoq vekirin, nêrî ko du zarok tê de ne.

Her yekî tiliya xwe xistiye devê ê din, û dimijin. Lawik û pîra diya xwe man ecêbmayî li wan zarokan.

Ji diya xwe re got: êdî tu karî tu ne kî, çavê te li van zaroka be. Ev zaro li cem pîrê mezin bûn, navê lawik danîne Ferzende, û navê keçikê danîne Gulçîçek.

Heyanî ko mezin bûne, emrê wan bû deh sal, her du li hev rûniştine û dibêjin: çawan bavê me tu ne, em ji pîrê re dibêjin yadê, û ji lawê wêna re jî dibêjin yabo... bavê me kî ye, divê em seh bikin..

Çûn, cem pîrê, her du û jê re gotin: yadê, ji me re rast bêje, bê bavê me kî ye?

Pîrê ji wan re got: ya rastî, ez nizanim; lawê min çû bû masîvaniyê, û nêrî ko sendûqek, bi ser avê re tê; û hon her du tê de bûn, em nizanin bavê we kî ye; hon dixwazin li cem me bimînin, hon dixwazin herin!... Ferzende jê re got: pîrê, t'aba xwe li me helal bike, emê herin!

Her du, Ferzende û Gulçîçek rabûn û bi dinyayê de meşiyan; ketin Kerbela, hatin ber çemekî mezin, nêrîn ko qesrek li ber çem heye; û wî alî çem, bajarekî mezin heye.

Nêrîn ko qesir vala ye, banî ketin qesrê, ev û xweha xwe tê de man, mişwarek xurt di wê qesrê de wextê xwe borandine; ev bajar, bajarê bavê Ferzende ye.

Keçka wezîr pê hesiya, ko du zarok hatine vî bajarî, seh kir ko ev zarok, ên ko avêtine avê... Kuncîlên şîn li xwe kirin û çû qesra ko Ferzende û Gulçîçek tê de ne.

Ji Ferzende re got:, heyfa te, xortê delal, ko hespê te tu ne ye; divê tu herî, hespê qemer ji xwe re bînî û lê siwar bî; encex minasibê te ye.. Ferzende jê re got: pîrê, hespê qemer li kî derê ye!

Pîrê got: lawo heke te qesda ewî kir t'ê bibinî, ez jî nizanim li ku derê ye, dibêjin di bajarê xerabe de ye.

Ferzende go: lazim ezê herim. Xweha wî jê re got: heke tu bi ya min dikî, tu na rî, tu zaro ye, t'ê li çoline bimirî, herî kû.? Ferzende go: nabe, ezê herim! Ferzende derket û bi çolê de meşiya; qonaxa du roja çû, gelekî tî bû..

Nêrî ko zelamkî ixtiyar li ser devê rê sekiniye; şerbikekî avê pê re heye, giha cem kalo, xeyir hatin tê dan, kalo av dayê, û jê re got: ya xortê delal, t'ê herî kû? Ferzende jê re go: ezê herim hespê qemer!

Kalo jê re got: lawê min, ya xortê delal, gelek peyayên weke te, çûne vî hespî û venegeriyane, tu ni karî bînî, vegere mala xwe. Go: na be; ezê herim.

Kalo nêrî ko ra tê na be, go: de ezê mesela hesp ji te re bêjim; go ev hesp di bajarê xerabe de ye, kesek ni kare wî zeft bike, niha dinya navê rojê ye, germ e, niha li ber siha dîwarekî bilind e, çavê xwe bigir, ezê te li ber vî bajarê xerabe deynim, here ser serê dîwêr û xwe bavêj ser pişta wîna, hesp tihn e, ewê dihn bibe û bibeze, tu jê re bêje; ya heywanê delal, ji roja xulka te bûye, tu jibona min î, wê bisekine û t'ê bînî.

*ne qediya ye*

## Wey La Miro!

Wey la Mîro, wey la Mîro... hakimo, xweşmêro, biçûko, wezîro!..

O, lo Mîro, minê digo, ev çi bû, çi ciriya, mi dî agir ketî mehela Meşkîna, tora Mihelmiya; ezê rebenê Mîrê xwe me, ko min zanî biwa bextê Mîrê min ev e, ezê biçûma civanê Mîrê xwe bi şev e. O, lo Mîro; ew çi bû, çi qewimî; mi dî pozê keleha Mêrdînê, bi ser qesra mala Hecî Kermo de dihedimî; mîna qeymaxê miha, bi kubara sibê re, li ser nanê genimê.... Ezê, rebenê Mîrê xwe me; ko min zanî biwa, bextê Mîrê min ev e; ezê biçûma civanê Mîrê xwe, bi şev e.

O, lo Mîro; dilê min ê dîl, li dîn e, mi dî, sibehê Melesê derdikevî, ser banê Birca Belek, li dora qesra Kevir-Hewara şewitî dimeyizîne; dinêrî ko mûm û fenerê dewletê, li dora qesra Kevir-Hewara şewitî ne!..

Wey lo Mîro, hesab li axê erda heye; li çadir û sîwanê dewletê tu nî ne!.. Mi dî, Hezarê sê denga kire gazî, digo: Melesê, porkurê, nemayê; tu rabe, derkev, ser banê bircê, tu qebhetê giran bi çavê serê xwe bibînî.

Hay lo Mîro, hay lo Mîro; mi j' t' er ne go: O, lo Mîro, tu wiha ne kî; tu ê serê kuçikê van M.... jê ne kî; tu Birca Belek xera ne kî; tu fermana me ji Stanbolê ranekî; tu miradê dost û dijmina li me ne kî.

Melesê, derdikeve ser banê birca jorî, li dora qesra Kefir-Hewara şewitî dimeyizînê; dinêrî ko peyakî di ser riya Dêrizbînê; xopan tê, dileyizînê...

Mi dî, Melesê sê denga kire gazî; digo: Hezarê, Xwedê hebîna, tu rabî, miftê li sendûqa ezrûmê xîne, tu mirata dûrbînê, ji sendûqê biderîne; ezê li ber çavê xwe deynim, ezê saxlûx û silûxê wî peyayî hilînim; binêrim ev peya ji mala kê ye? Hezarê radibê, miftê li sendûqê ezrûmê dixîne; dorbînê jê distînê: dide destê Melesê; li ber çavê xwe datîne, dinêre li ser riya xopana Dêrizbînê, li wî peyayî dimeyizînê...

Melesê sê denga ban dikir: Hezarê, porkurê, nemayê; ew peyayê ko tu dibêjî; jê re dibêjin Çeçanê Nêsir e, gurê roja qewamê; roja tengiyê, hefadê xanim û xatûnan.. di Birca Belek de, wan daim dihemînê...

Xwedê hebîna, tu rabî, ban melê kî, bila kaxezekê binivîse; tu ê bişînî pêşiya Çeçanê Nêsir, gurê roja qewamê, hefadê xanim û xatûna; bila li mûciba wê kaxetê; kaxetke dî binivîse; bila li nav Koçeka û Bûbilana de, bilezîne; bila here cem mala Qaso axa, bila komek giran ji wê der bicivîne, bila xwe ji wê der berde xopana Çalê, cem mala Osmanê Eshed; bila ji wê der jî komek giran bicivîne? û ji wê der xwe berde qesra xopana Metîna, cem mala Elî Axa; Elî axa zor qehar e; bila li Mehmûdkiya bike qêrênê; bila komek giran ji wê der jî bicivînin, şevkê ji esir pê ve, ji aliyê qiblêtê de, li eskerên dewletê biteqînin, belkî heyfa Smaîl Begê, kekê Helef begî; apê Terhî begî; ji van teresê romiya hilînin.

O, lo Mîro ferman e; fermana serê Mîrê min giran e;

Mi dî, Smaîl begî sê denga ban dikir Helef begî; Xwedê hebîna, m' j' t'er ne go tu ê wiha ne kî, tu rabî ban melê kî, bila kaxetkê binivîsê, tu ê bidî destê xulêm; bila berê xwe bide cem mala Haco Axa, bila komek giran ji wê der bicivîne, bila şevkê bêne Dêrizbîna xopan mêvandarî ne; a dinê şevê li qesra Kefir- Hewara şewitî, li Birca Belek dawetlî ne.

Bi çeplê wana bigirê, wan li sûka Qeyseriyan bigerînê, bila binêrin ji gewdan bê serî ne, û ji destan bê tilî ne, hemî kûçikê M.... serbikesk in, aliyê şêxanî ne, dilê wan reş e, nava wan wek tenî ne, sed û adaniyê Xwedê li canê min keti be; ezê koka teresê wan M.... jî binî de, biqelînim.

## Wêne



**Naqûsên Ibadetgehan**

Elemana naqûs û ceresên ibadetgehên erdên Ewripayê kom kiri bûn û dixwestin jê top û gulan çêkin. Xwedê ne bû yarê elemana, û naqûsên komkirî vedigerin ibadetgehên ko jê hati bûn hilanîn.



**Ceng Qediyaye**

Xelên payetextê brîtanî ketine nav kûçe û kolanan û bi şadimanî rojnamayên ko dawiya şerê Pesifîkê elamdidin dixwîn in. Japona jî, mîna elemana, bê gotinên kêm û zêde, xwe avêtine bextê Hevalbendan.

# Tefsîra Quranê

49- Pêxemberê min... Li wan mêze bike, çawan ew derewan bi alî Xwedê ve .didin; ji xwe ev gunehê wan, besî perîşaniya wan e.

50- Ma tu li wan na nêrî ko ji Tewrat û Incîlê parmend bûbûn û niho radibin û bi pûtên weke Cibt û Taxûtê baweriya xwe tînin û dibêjin: Riya kafiran ji ya bawermendan rastir e.

51- Xuda ji wan standiye, ew ketine laneta Xwedê. Ji bona mirovên ko ji rehmeta Xuda hatine qewirandin, tu ni karî arîkarekî peyda bikî.

52- Ma heke ew ji padişahî û dewlemendiya dinê parmend bûna, gelo wanê ji kesî re pûlek bidaya.

53- Ma çire cuhî seba nîmeta ko Xuda ji xelkê re da, dilreş dibin û didexisin? Me ji malbata Ibrahîm re kitab û hikmet û padişahiyeke mezin da bû.

54- Hinên ji wan baweriya xwe bi bezma Muhemed anîne, lê hinên din rûyê xwe jê zivirandine agirê dojehê besî wan e.

55- Yên ko ayetên me inkar kirine û pê kafir bûne, emê wan bavêjin agirê dojehê, û her cara ko çermê wan bête şewitandin, emê çermê di wan ji nû ve çin bikin, da ko ew lezeta agirî xweş tam bikin. Qudreta Xuda mezin e; Xuda zana û fêris e.

56- Lê yên ko bawermend bûne, û tiştên qenc pêk anîne, emê wan bigehînin buhuştên têr av û kanî, û ew tê de her bimînin û di wan buhuştan de, ji bona wan jinên paqij û delal wê peyda bibin û emê wan bigehînin sihên taze û honik.

57- Emrê Xuda ye, gava ji we re tiştekî emanet dan, wî emanetî bidin xwediyê wî, û heke hon di nav xelkê de hikim dikin, hikma xwe li gora edaletê bikin. Ev emrên Xuda çiqas delal

Û hêja ne. Xuda bîna, bihistiyar, û zana ye.

58- Gelî bawermendino...Ji Xuda, pêxember û mezinên di xwe re itaetê bikin, û heke we baweriya xwe bi Xuda û roja piştdawiyê aniye, gava hon li ser mes'elekê li hev na yin, bi ya Xuda, û pêxemberê wî bikin, bi vî awayî hon digehin rastiyê û xeyrê dibînin.

59- Ma tu wan na bînî ko zen dikirin heçko baweriya xwe bi kitêba ko ji te re û bi kitêbên ko beriya te dahatine anî bûn; û niho radibin û dixwazin li gora hikmê Taxûtê bimeşin? Ji wan re hati bû emir kirin ko wan divê Taxutê inkar bikin, lê şeytan dixwaze ko ew ji riya rastiyê derkevin; jê dûr kevin, û riya xwe şaş bikin.

60- Gava ji wan re tête gotin: bikevin pey Qurana ko Xuda nazil kiriye û bidin pey pêxemberê Xwedê, tu dibînî ko minafiq rûyê xwe ji vê ronahiyê dizivirînin û xwe ji vê baweriya pak bi şûnda dikişînin.

61- Ew, piştî ko mala xwe bi destê xwe xira dikin, radibin tên 'nik te û dibêjin: Qesda me lihevhatina mirovan bû û em tiştekî ko xilafî emrê te ye na kin.

62- Xuda tiştên ko ew di dilê xwe de vedişêrin pê dizane, guh me de wan, wan bi şîretan bişidîne û bi gotinên geş dil û gubê wan veke.

63- Ji şandina pêxemberan qesda me ew bû ko xelk jê re itaetê bikin. Heke yên ko gunehkar û ezabdarên nefsa xwe bûne, tên nik te û ji Xwedê efiw û toban dixwazin û dikevin bextê te û mehdera te hêvî dikin, wê bibînin ko Xuda efiw û toban dide wan, Xwedî piyar û mehrivan e.

64- Bi Xwedê, li ser tiştên ko ew li hev hatine, heta ko tu hikmê xwe ne dî, ew pê qail na bin, ew baweriya xwe na yênin; lê piştî hikmê te, di dilê wan de, şik na mîne, û ew bi dil û ziman qail dibin, û dikevin bextê te.

65- Heke me ji wan re bigota: xwe bikujin an ji welatê xwe derkevin, hinekî wan wisa dikir lê heke wan li gora şîreta me bikirana, di heqê wan de çêtir dibû û baweriya wan pê zexm dibû.

66- Me ê ji wan re sewabên mezin bidaya.

67- Me ê wan bigihanda riya rastiyê.

68- Yên ko itaetî Xuda û pêxember dikin, hevalên nîmetgihayên Xuda ne, ew hevalê pêxemberan, bawermendan, şehîdan û qencîkera ne. Ew, çi hevalên delal û spehî ne.

69- Kerema Xuda wisa ye, û tiştên ko em dikin, Xuda bizane, bes e.

70- Gelî bawermendino... Xwe pêk bînin, çekên xwe hilgirin, heydan û heybeta xwe bidin neyarên xwe û gava hon diçin pêşiya wan, kom bi kom an bi teway herin.

71- Yên ko bextreşî kirine û xwe ji şerî dane paş, gava ji we re musîbetek digehe dibêjin: Destkişandina me ji şerî, ji kerema Xuda ye, an ne, ji me re jî, belayek wê bigihişta û em jî şehîd bibûna;

72- Û gava hon dijminên xwe dişkînînin û talanê wan tînin û ji we re qenciyekê digehe, ew dibêjin: her çend jî, di nav beyna me û wan de tu hevalîtî nîne, xwezî em bi wan re bimana, û ji talanê behreke mezin bistanda.

73- Yên ko jiyîna axiretê, ji heyîna dinyayê çêtir digirin, divê di riya Xwedê de, dest bi şer û kuştinê bikin,; yên ko di Xwedê da têne kuştin û yên ko zora dijminên xwe dibin, bila bizanin ko ji bona wan sewabeke mezin heye.

74- Ma çi li we qewimiye ko hon, ji bo xelasî û azakirina qelsenêr û jin û zaroyan, dest bi şer û kuştinê na kin; ma hon na bihîsin ko ew ji Xwedayê xwe re dia dikin û dibêjin: Yezdanê me, me ji vî bajarê ko rûniştimanên wî zalim in derîne û ji me re arîkar û sermiyanekî bişîne, da ko em pê zora dijminên xwe bibin.

75- Yên bawermend, di riya Xuda a rast de, û yên kafir di riya Taxûtê a xwar de dest bi şer û kuştinê dikin. Gelî bawermendino... dirêjî hevalên şeytên bikin û bizanin ko hîlebaziya Iblîs kurt û sist e.

76- Ma tu li wan mêze na kî... yên ko berî ji wan re hati bû gotin: niho dev ji şer û kuştinê berdin û dest bi kirina nimêjê û dana zekatê bikin; piştre gava ji wan re bi şer û kuştinê hate emir kirin, hin ji wan rabûn û xelkê tirsandin, bi tirsekê ko mirov pê ji Xuda ditirse an bi tirsekê jê hêj mezintir, û digotin: Xudayê me, tu çima ji me re, emrî kuştinê didî, xwezî te bihişta em li ser cih û nivînên xwe bi ecelê xwe bimirana. Bêje wan: Mal û xweşiya dinya tiştekî hindik û kêmeyar e, ji bona bawermendên ko ji Xudayê xwe tirsiyar in heyîna axiretê tiştekî çêtir û spehîtir e, û bizanin ko ji xwe re tu neheqî na ye kirin.

77- Hon her kû derê jî bibin, di asegehên mezin de jî xwe veşêrin, mirin nîzîkî we dibe û hon dimirin. Gava qenciyek digehe we bêjin : ev ji kerema Xwedê ye, û gava xirabiyek tê serê we bêjin ev jî ji wî ye; û tu, pêxemberê min, bêje: Her tişt ji Xuda ye, û her tişt bi emrê wî çêdibe. Ma ev çi miletek e ko mana gotinekê jî seh na ke, û pê bîrewer na be.

78- Her çi qenciya ko digehe te ji kerema Xuda ye, û her çi xirabiya ko digehe te kedê nefsa te ye, ango Xuda bi wê belayê, te diceribîne. Me tu ji mirovan re bi pêxemberîtiyê şand, Xuda şahidê pêxemberîtiya te ye, û ev besî te ye.

Destpêka Tefsîrê di hejmarên Hawarê de hatine çap kirin. Hejmar 27. û heta 57.

## MIRÉKA CIHANÉ



*Bergehek ji mehkema Mareşal Peten, di Parîsê de. Peten giha bû heta payeya Mareşaliyê; û xelkê Frensê jê zehf hez dikirin, ew payedariya serfiraziya Ordiyên Frensizî a 1914-1918-an bû. Di vî şerî de ew rabû destê elemana girt û bê bextî li welatê xwe kir û diviya bû bête kuştin, lê her wekî gelek pîr e, ne hatiye mirandin; heta dawiya emrê xwe di hebsê de, wê bimîne.*

**Strana Kurdî**

## BÊMALÊ

Lawik ban dikirê keçikê, digo: bêmal ez û tu ne; di vî welatê me de, bêmal ez û tu ne; te ne mêr î, û mi ne jin e; tu rabe destê xwe bidê destê min e...

Emê, ji vî welatî birevine; ji xwe re herin welatekî din e; xelk û alemê ji dê û bavê min û te bipirsin e...

Wê bêjin çavê reş û belek, îro sê ro, xerîb ketine, li welatê xerîb û xurbetê; dinya û alemê, li serê min û te bicivine...

Wê bêjin, lawo, belao, hon ji kû ne? Wê gavê, emê bêjin, em xwişk û brayê hev û du ne, em ji ber zilm û zulemata tirka direvine; wê bêjin: şiklê we, mîna şiklê hevûdu qe na bine; wê gavê emê bêjin: gelî xelk û alemine, bavê me yek in, diyên me dido ne.

Lawik ban dikirê; lê, lê keçikê; di ser min û te re, Rebê Alemê mezin e, di binya min û te re, kar û berx û mî û bizin e; de rabe, destê xwe bide destê min, taliya dinyayê mirin e.

Bejna Zirav, ji xwe re rûniştiye, li ber qesrê, dawa têqî dayê ber sitarê....

Lawik ban dikirê, lê, lê keçikê, mala bavê şewitiyê; de rabe ramîsanekê bi mi dê, êvar e, dereng e, roka me ne ma, ketiye hikmê êvarê; heval û hogirê me; ji çola berê xwe dane malê!...

Lê, lê bêmalê, roka me ne ma, heyva me yê çardeşevê, sewqa xwe dayê, welatê Kurdistanê, çol û çiya û dar û devî.

Lawik ban dikirê, digo: gelî heval û hogirno, werin emê herin Şerîeta Mihemedî, binêr dê Xelkê Delal, ji kê re dikevî.

## Cigareyên Tamdar

Cigareyên çêtir û tamdar, yên Rejiya Libnan û Sûriyeyê ne. Jokey-Klub, Yekemîn, Befra, Tatlî-Sert, Vircinya, Oriyen, Zodiyak; ev cigareyên he hemî, ji titûnên çêtir û paktir têne çêkirin. Piştî xwarinê cigareke baş, dilê cigarevexwaran vedike.

Gava dixwazin cigarekê vexwin, navên Jokey-Klub, Yekemîn-Birincî, Befra, Tatlî-Sert, Vircinya, Oriyen, Zodiyak bînin bîra xwe û yek ji wan paketan, ji xwe re bibijêrin.

# Gerandina Dewleteké

## 2

Wezîrê paşrojmendiyê, serekê wezareta paşrojmendiyê ye. Dewlemendkirina welatekî karekî gelek girane ye. Da ko pereyê miletekî xwedîqîmet bimîne, divê ev pere di welatên biyanî de jî, xwedîqîmet bibe. Xwedîqîmetbûna pere bi qudreta xwe a kirînê girêdayî ye.

Emê bêjin ko hikûmeteke kurdî hatiye danîn û pereyê kurdî diçe bazarên biyanî. Heke hatina Kurdistanê pir in û baş in, xelk bi vî pereyî ji kurda hûr û mûra, pez û dewaran, mexfûr û xalîçan dikirin, her tiştê ko hewcedar in jê tînin, û bi vî awayî qedrê pereyê kurda tête girtin.

Lê, heke kurd, di welatê xwe de, xweş na xebitin, zad û xwarin, pez û dewar, hirî û hevrûşim û zayeyên wan ên din kêm in, û xelk bi pereyên kurdî ni karin tiştekî hêja bikirin; qîmeta perê kêm dibe û kurd bi xwe tiştên ko hewcedar in, ji welatên din, ni karin bînin ji ber ko, qîmeta pereyên wan hindike û ew kêmrekbet e. Heke wilo bû, di welêt de zîwarî û perîşanî destpê dike.

Qidret û qiweta miletekî, li gora xebata lebatên vî miletî ye. Heke hemşehriyên erdekî, bi tevayî û bi zêrekî, li gora qeydeyên zanîn û mehrefetê dixebitin, û di hundirê welêt de, hatina erdê, hatina gund û bajaran, destgeh, karxane û febrîqan pir û başi in, ev milet di nav miletên Cihanê ên din de dibe dewlemend û di nav nijadan de, xwedî qedir û rûmet.

Wezîrê karên civakî, serekê wezareta xwe ye. Milet divê bixebite, divê saxelem be. Xaniyên xelkê, xaniyên gundî û xebatkeran, xaniyên hemî rûniştimanan, divên bi awakî çak bêne ava kirin. Mirov na be ko xaniyan de rûnin, ko pencereyên wan nîne, dû û dûman, toz û ax, bihnên genî têde ne. Ker û dewar, pez û golik nabin ko rast bi rast di tenişta xelkê malê de bixwin û vexwin, û tiştên mayî bikin.

Di Mala her gundiyekî de, divê ji qeneve du mezel, hewşek û deh mêtir ji van mezelan dûr axûrek hebe. Heywan û însan na be ko, bi şev û bi ro tenişta hev de mîna hevala rûnin. Gava zaro tên dinyayê, divê diktorek vî zaroyî bibîne; ji bona dûrkirina nesaxiyan jê re, derziyek an dide lêxe.

Zaroya divê hero du car bi sabûnê bêne şûştin, cihê wan divên gelek paqij bin, mêş û kelmêş van aciz ne kin. Şîrê ko ji wan re tête dayîn, divê bête kelandin.

Avrêjên xaniyan divê ji mala dûr bin, û çaleke wan î kûr hebe, gava di avrêjê de kes tune, texteyek divê bête dayên kulê avrêjê. Demên nexweşiyên giran de,xelk divê bikevin xestexanan; ango divê xestexaneyine baş bêne çêkirin; û ji bona nesaxiyine biçûk, yên ko heke mirov bala xwe ne da, dibin nexweşiyine dijwar, mîna êşa çavan, ta, birînine biçûk, nexweşiya zaroyan dermanxaneyan têne vekirin.

Herwekî, însan ne heywan e, û ne heq e ko ji t'aba mirovekî, mirovine din kar bikin û peyayê ko dixebite dawî ji nanê tisî pêve nikare tiştekî bixwe, nikare ji bona jin û zaroyên xwe ên nesax diktor û dermana bîne, keç û kurên xwe bişîne xwendegahan, ji xwe re, û ji zar û zêçên xwe re, nikare cilekî pakij û nû bikire, di feqîrî û perîşaniyê de bimîne, wezareta civakî li van tiştan dinêre; û bernade ko tiştên wilo çêbibin, xelkê digihîne xweşiyê, nizam û intizamê û wan berxurdar dike.

Her kesê ko dixebite, divê bikare mîna însanan bijî, di paqijî, rahetî, selametî û kamiraniyê de emrê xwe derbaz bike, qedrê wî bête girtin û kes bê sebebeke qanûnî, têkilî wî ne be.

Ev in karên hêja ko pê karker û dîwanên wezareta civakî mijûl dibin, xelk bi şîret, qanûn û arîkariya di wê pêş ve dikevin. Bêşik, dewletê divê bixebite, lê xelq jî divê arîkariya wê bikin, dako di navbira milet û hikûmetê de tevkariyeke çak hebe û pêşveçûn çêbibe. Wezîrê kevne û mehkeman, serekê wezareta xwe ye. Herwekî di nav xelkê de, doz û dehwa çêdibin, safîkirina van doz û dehwan, li gora qanûn û isûlên danî, karê mehkeman e, û mehkeme bi tevayî girêdayî wezareta kevne û mehkeman e.

Hakim an qadî, divên li gora qanûnên welêt, heqê xwediyê heq bînin cih, û bidinê, kes di welêt de, heqşkênandî ne mîne, her kes bigehe heqê xwe. Di pêşiya mehkeman de, biçûk û mezin, feqîr û dewlemend, xurt û qels nîne. Bê qerara mehkemekê kes nikare bête êşandin.

Bi qerara mehkemekê mirovê sûçdar, dikeve hebsê û têle kuştin jî. Lê tu car cendirmeyek an polîsek li peyakî ni kare lêxe, an dijûnan lê bike. Ev ne heq û hedê tu kesî ye. Lê ji aliyê din gava polîs an cendirmeyek neheqî kir, mirov dikare gazinda jê bike, di heqê wî de, dehwayek rake.

Her tişt bi isûl û qanûn e, bi isûl û qanûn tête meşandin. Te divê qedrê mêmûrên dewletê bigirî, wan jî divê qedrê te bigirin. Mezinahiya kesî li ser kesî nîne. Wextê zor û zorkerî ji mêj ve bori ye.

Ji yê ko xwedî heq e, xurtir kes nîne, lê heke tu dixwazî bi dara zorê bigehî heqê xwe, heye ko heqê xwe winda dikî. Bindestiya qanûn û nizaman bike û ko te wila kir bizane ko şah û padişah ji te ne xurtir in.

*Kevnezan*

# PÊJINÊN DINYAYÊ



Şer qediyaye; hoste û qesirbendên ingilz, dest bi selihandina avahiyên bombexistî kirine; di payetextê Brîtanya Mezin de, der nîzingî Ibadetgeha St. Paul, xebateke zor û bi şewq, pêş ve diçe; xelk dixwazin bajarên xwe bi awakî, ji yê berî hêj çêtir û çelengtir ava bikin. Bi çiqasî bextiyar in ew peyayên ko ji bona miletê xwe dixebitin.



*Xebatkerên denîmerkî ji bona balafirvanên ingilîzî payedariyek danîne, li ser vî keviri hatige nivîsandin: ji bona xelasî û serbestiya welatê me, em şikirdarî Xwedê ne. Ji peravên Ingilistanê balafirvanên brîtanî çek û sileh, şûr û xencer, bombe û mitralyoz anîne ji me re, da ko em bikarin, welatê xwe, erdê kal û kalikên xwe ji destê neyaran, ji destê zalim û xedaran xelos bikin, wan balafirvana canê xwe dane, heta ko em aza û serbest bibin; ew îro di erdê welatê me de, hatine veşartin; Xwedê rûh û giyanê wan şa bike.*



*Di Rangûnê de, eskerên brîtanî, şabûniya xwe elam didin. Cenga japonan qediyaye, japon bêmecal ketine erdê, û di pêşiya cihanê de, dergehên silh û aşîtiyê, azahî û serbestiyê vebûne.*

3ème ANNÉE — LUNDI 1er OCTOBRE 1945 — NUMÉRO 58

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél. : 74-04 et 84-41
QUOTIDIEN KURDE
Directeur-Propriétaire : EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN
Le Numéro 25 P.L.S. - Abonnement :
Liban-Syrie 25 L.L.S. Etranger 4 L. Stg.

## LES KURDES ET LEUR PAYS

*(suite du numéro précédent)*

Si nous rencontrons donc dans le caractère kurde des traits qui, d'après le jugement des Occidentaux, sont considérés comme des vertus, le crédit en revient à une disposition naturelle et fondamentale qui est susceptible d'être développée pour le plus grand bien de la communauté. Et nous rencontrons ces vertus : la loyauté constante, le maintien de la parole donnée, l'affection généreuse pour les proches parents, une attitude plus digne à l'égard des femmes (parmi les kurdes méridionaux et moyens) que celle qu'on observe chez les autres nations musulmanes, le sens littéraire et l'amour de la poésie, le désir généreux de se sacrifier pour sa tribu et une belle fierté de sa nation, et de son pays. De quel air magnifique le kurde ne se redresse-t-il pas pour dire suivant la dialecte «Az-Kurmajam» ou « Min Kurdim » (je suis kurde). (A. page 394-395)

A l'époque actuelle, une comparaison entre l'européen et le kurde n'est pas au désavantage de ce dernier, si cette comparaison porte sur l'idéal et les principes moraux. Car l'homme ne peut être jugé que sur son adhésion à un idéal et à des principes, en tenant compte de leur élévation ou — ce qui est souvent le cas — de leur absence. Parmi mille kurdes choisis au hasard, les délits de nature vile sont plus rares que parmi un nombre égal d'Européens. (A. page 393)

Car voici un pays intact habité par un peuple intact ; dans les retraits montagneux où le voyageur européen n'a jamais pénétré un peuple primitif, encore dans l'âge d'or, pratique la simple pureté et la naive sauvagerie de l'humanité à ses débuts. (C. page 360).

... en ce qui concerne l'auteur, le souvenir des difficultés, des inquiétudes et de la terreurs éprouvées au Kurdistan s'est effacé pour laisser place à celui de chevauchées par les montagnes sauvages et les vallées florissantes, de la joie d'observer les coutumes étranges et de s'intéresser aux vieilles traditions de courtoisie et d'hospitalité de patriarches à barbes blanches, de l'esprit éveillé et de la joyeuse camaraderie de jeunes chefs au sang ardent, de costumes aux couleurs vives et du pittoresque sauvage d'un peuple oriental primitif. Il me semble parfois que je suis prêt à sacrifier tout mon avenir pour une soirée avec Khurchif Agha à Makhmour ou pour traverser encore une fois à cheval la gorge de Rowandouz.

Je me suis fait beaucoup d'amis au Kurdistan et aussi un certain nombre d'ennemis, mais parmi ces derniers, il n'y en a qu'un qui n'aura jamais mon pardon — et cela parce qu'il est probablement le seul qui m'ait jamais trahi... (C pages 360-361)

### Le Pays :

A Gali Ali Beg, la terre aride du Kurdistan, ses montagnes sauvages et ses rochers gris se couvrent au printemps d'un prodigieux manteau de beauté.

Vers la fin du mois de mars, en l'espace d'une seule nuit, semble-t-il, la neige qui tapissait le sol disparait et la tiédeur du printemps est dans l'air. Les brumes se dissipent, comme si le voile qui tamisait la vue pendant des mois avait subitement été levé. Sous le ciel clair, les montagnes semblent plus proches que jamais. Par-dessus les sombres murailles de la gorges, les champs de neige se fondent dans le ciel brillant et immaculé, telles des ailes blanches et lustrées d'un oiseau géant. La vallée se couvre d'une herbe épaisse, sauf aux endroits les plus pierreux. (D. page 209).

L'herbe est parsemée de fleurs de toutes les couleurs. Chaque jour, c'est un nouveau ton qui domine. Un saillant inaccessible, très haut au flanc de la grotte, brille de tulipes écarlates tandis que la route est bordée d'iris bleus. Dans les crevasses les plus sombres, on trouve de grands lys, de petites orchidées et des lits de violettes. Le versant de la montagne près de Kani Uthman est couvert de vastes champs de narcisses blancs comme la neige. Au Dacht-i-Harir, près de la rivière Zab, se dressent d'énormes pavots rouges et de longues marguerites blanches — car dans la pleine la flore est toute différente de celle des gorges. On marche sur un tapis formé de myriades de petites fleurs, sauf dans les régions cultivées où les fleurs sont grandes. A mesure que progresse le printemps, les collines, ondoyantes adoptent toutes les colorations, changeant de tons comme des caméléons géants chaque fois qu'une variété fait place à une autre jusqu'à ce qu'enfin la terre redevienne brune sous le soleil d'été, ne gardant qu'un foin court pour les pâturages d'automne.

Je crois que le Dacht-i-harir offre le plus beau de ces spectacles. Il est cultivé partout où la nature du sol s'y prête. Afin de dégager le terrain pour le labour, chaque champ a été entouré de larges ceintures composées de pierres soigneusement ramassées, parfois empilées jusjusqu'à former de hautes pyramides. Ce pays pierreux produit les céréales en quantités étonnantes. Les récoltes d'orge, de blé et de seigle sont aussi abondantes que n'importe où au monde, mais beaucoup de terrains restent en friches et sont recouverts d'une masse de fleurs sauvages. Vu des hauteurs du Harir Dagh, l'immense étendue des champs avec leurs lignes irrégulières de pierres, semble une vaste ouverture rapiécée qui aurait été déposée par des mains géantes sur l'uniformité grise de la surface hivernale. C'est alors qu'on comprend pourquoi des hommes se sont battus et entretués, au cours de tant de siècles pour la possession de ces terres apparement sans valeur (D. pages 210-211).

Les arbres rabougris des versants rivalisent avec les fleurs dans l'épanouissement de leur beauté printanière. Ceux qui s'aggrippent aux côtés de la gorge, qu'on croirait arides et mortes pendant des mois, prêtent maintenant aux sombres rochers un aspect moins rébarbatif, car ils poussent dans chaque crevasse. Et puis, il y a des arbres fruitiers, le premier à fleurir est le mûrier sauvage. Son fruit se forme déjà que le poirier, le pommier, le pêcher, l'abricotier et le noyer daignent à peine s'apercevoir de la venue du printemps — mais ces derniers ont tôt fait de le rattraper. Nulle vue n'est plus enchanteresse que celle des grands vergers de Chaklawah au printemps. C'est ici que les hauts « apandar » ou peupliers géants émergent d'un océan d'arbres en fleur parmi lesquels les abeilles amassent leur miel pour le déposer dans les troncs creux, chaque essaim et soigneusement repéré par les villageois. Le souvenir des fruits de ces jardins, des sacs de noix, des outres pleines de miel sauvage, des ânée de raisin succulent — on les payait un prix dérisoire — me reste comme la satisfaction palpable et comme la rétribution de ma vie solitaire au Kurdistan.

On verra que dans ce pays, se rencontrent les extrêmes de l'abondance et la disette. Le printemps est aussi généreux des fruits de la terre que l'automne et l'hiver en sont avares. Heureusement, le Kurde est loin d'être imprévoyant. Il amasse des réserves pour l'hiver et il songe même à l'imprévu, car il faut tenir compte de la possibilité de guerres et de troubles — en vérité au Kurdistan, c'est une quasi-certitude (D. pages 212-213).

### L'amour de la nature

Le Kurde apprécie le beau, chose rare chez les Orientaux (C. page 155).

Nul ne jouit plus des fleurs et du vert printemps que le Kurde lui-même. Partout, on m'offrait des bouquets de fleurs sauvages et de de jardin. Aussi étrange que cela paraisse ces gens vivent encore groupés en tribus aiment à cultiver les fleurs, aux bords de leurs maisons et nul sujet de conversation ne les intéresse plus que celui qui traite de ces questions. (D. page 211). (suite en page 2, 3 et 4)

### LA VIE

*Si la vie est une route*
*En parcourant une grande partie*
*Je me demande si l'on dit :*
*« Que je suis heureux*
*Cela finit » ?*

*Comme un homme qui a soif*
*Qui tient un verre entre ses doigts*
*Boit, boit, boit.....*
*Et quand il ne reste que quelques gouttes*
*Se dit-il ? :*
*« Que je suis heureux*
*Cela finit. » ?*

*Si la vie est une charge*
*Une chose lourde*
*Sur une route*
*Difficile ;*
*Quand on est près du but*
*Fatigué de la lutte*
*Se dit on : « Je suis heureux*
*Cela finit » ?*

*Oui la vie est une route*
*Difficile, tragique et lourde*
*Au milieu d'une nuit*
*— les yeux pleins*
*Comme quelqu'un de gravement malade*
*Qui voit la fin*
*Cherche-t-on le matin ?*

*Cette poignée de cigarettes, est-ce ma vie*
*Qu'on compte comme les jours*
*A la surface blanche, à l'essence amère?*
*Que je fume souvent, distrait,*
*Et au milieu de la nuit*
*La dernière bouffée*
*Est toujours la plus douce.*

### VOTRE AMOUR

*Donnez moi cet amour*
*Qui est plus fort que la vie ;*
*Votre premier amour*
*Qui est grand, étonnant*
*Comme l'aube.*

*Pourquoi riez vous ainsi*
*Comme un rayon de soleil à travers une averse ?*
*Je veux cet amour aveugle*
*Conduit par l'astre du destin,*
*Pas l'amour d'un festin*
*Aiguillé par les fruits et le vin.*

*Vous riez toujours*
*Comme un jour d'été,*
*Mais vous êtes le printemps*
*Ma belle ;*
*Le temps*
*Passe trop vite*
*Il est court pour contenir*
*Des sourires qui ne disent rien.*

*Dehors l'orage éclate soudain.*
*Ma belle rit toujours ;*

*Pourquoi tamiser la flamme du cœur*
*Comme la lumière sous un abat jour.*

# Tefsîra Quranê

79- Yê ko ji pêxemberê Xuda re itaetê dike, ew ji Xuda re jî itaet kiriye (yê ko bi ya pêxember kiriye, bi ya Xuda jî kiriye), lê yê ko rûyê xwe jê dizivire, li ber Xuda berpirsiyar dibe; tu, pêxemberê min, ji emelê wan berpirsiyar na bî, me tu ji bona parastina wan ne rêkiriye, tu rastiyê şanî wan didî û hew...

80- Ko te ji wan re tiştek got, ew vedigerînin te û dibêjin: Li serser û li ser çavê me, em ji te re itaetê û ji Xuda re ibadetê dikin, lê gava ew ji xafa te derdikevin, hin ji wan mizawiriyê dikin û tiştine din dibêjin. Xuda emelê wan dibîne û tezwîrên wan dide nivîsandin; dev ji wan berde, û xwe bi Xuda bigire, wekalet û sermiyaniya Xuda besî te ye.

81- Ew Quranê dixwînin, ma tê na gehin? Heke Quran ji nik Xuda ne buwa, ayetên wê, li hev ne digirtin û pirsên di wê bi tevayî li hev siwar ne dibûn!

82- Gava mirovên minafiq, li ser zefer an şikestina eskerên pêxember tiştikî dibihîsin, hema wan ew xeber di nav xelkê de belav dikirin, da ko dilê misilmanan sist bibe; heke wan ew xeber ji pêxember, an ji mezinan re bigotana, pêxember û serekan dikari bûn, ji wan xeberan ên bikêrhatî bibijêrin û di nav xelkê de belav bikin. Heke ji kerem û mezinahiya Xuda ne buwa, bitenê çendek ji wan, ji destê şeytên difilitîn, xelas dibûn.

83- Pêxemberê min.... her kes ji cihadê dest bikişîne jî, tu bi serê xwe, riya Xwedê da, dest bi şer û kuştinê bike; ev ji te re hate ferz kirin û nav di misilmana bide, da ko ew jî, dest bi cihadê bikin û Xuda wan ji xirabiya kafiran wê bisitirîne, û dilê kafiran dê bitirsîne. Ern, zor û xurtiya Xuda ji yên kafiran hêj mezintir e.

84- Yê ko arîkariya îşekî baş dike jê, û yê ko arîkariya îşekî xirab dike dîsa, jê parmend dibe. Xuda bi her tiştî dikare.

85- Gava ji we re kesekî silavek dike bi awakî hêj delaltir lê ew,vegerînin, Xuda hizra her tiştî dike.

86- Xuda yek e û ji wî pê ve tu Xuda nîne; tu şik nîne ko ew dê roja piştdawiyê de,we dê bigihîne hev û du, we dê bicivîne. Ma kî ji Xuda bêtir xwedîqerar e, û li ser gotina xwe disekine.

87- Ma çire hon li ser bêbextiya kafiran dubendiyê dikin; herwekî emelê wan ne çak bû, Xuda ew vegerandin kufrê. Ma miroriya vên ko bi emrê Xuda ketine ser şaş; hon wan jê xelas bikin? Gava Xuda ji hinan distîne û riya wan şaş dike, êdî tu kes ni kare arikariya wan bike û wan bigihîne riya rastiyê.

88- Ew dixwazin ko hon jî weke wan kafir bibin û wilo bibin mîna hev; hon, ji xwe re, wan me kin heval, meger ko ew jî di riya Xuda de mihacir dibin; heke wan dest jê berdidin, wan bigirin û kû derê jî be, wan bikujin; ji wan ewle me bin, hevalitî, arîkarî û sermiyaniya wan qebûl me kin.

89- Yên ko diçin û dikevin bextê miletekî ko di nav beyna wî miletî û we de ehdek heye û yên ko ji kuştina we, an ji kuştina xelkên miletê xwe dilteng dibin û dikevin bextê we, hon wan me kujin. Xuda bixwesta ew ji we mêrtir dibûn û wan dest bi kuştina we dikirin. Heke ew xwe didin paş û dest ji kuştina we berdidin û aştiyê teklîfî we dikin, bizanin ko Xuda, êdî na xwaze ko hon direjî wan bikin.

90- Hon miletekî din dibînin ko gava pêşberî we de ne, xwe misilman didin zanîn û pê dixwazin ji we ewle bibin û gava vedigerin cem miletê xwe, xwe kafir didin zanîn, û pê dil dikin, ji wan ewle bibin, û her cara ko ji wan re tête gotin, bibin kafir, ew kafir dibin; heke wan destên xwe ji kuştina we ne kişand, dest ji we bernedan, bi wan re aş ne bin, kû derê jî hon rastî wan tên, wan bigirin û wan bikujin; me ji we re destûra kuştina wan daye.

91- Divê bê sebeb misilmanek misilmanekî tucar ne kuje, meger ko ev kuştin bê hemdê wî be. Yê ko misilmanekî bi qeza kuştiye, divê dîlekî misilman azad bike; û heqê xwîna kuştî bide, mirovên di wî, meger ko ew bi navê sedeqê jê diborin. Heke yê kuştî misilman e, lê ji peyayên miletekî kafir e, divê xwînî dîlekî misilman azad bike. Eger yê kuştî ji miletekî ye ko di nav beyna we de ehid heye (peyman heye), fidya wî weke yekî misilman e; divê xwînî heqê xwîna kuştî bide mirovên di wî, û dîlekî misilman azad bike. Heke ji bo azadkirinê dîlek ne ket dest divê xwînî du meh rojiyê bigire. Xwînî bi vî awayî dibe tobadarê Xudayê xwe. Xuda zana û fêris e.

92- Yê ko misilmanekî qesdane û bi hemda xwe dikuje, cezayê wî dojeh e û ew têde her dimîne. Xuda jê dienire, jê re lanetê dike û ji bona wî ezabekî mezin li hev tîne.

93- Gelî bawermendino.... gava hon di riya Xuda de, diçin şerî xwe melezînin, û misilman û kafiran ji hev û du baş nas bikin, û ji yekî re ko ji we re bi awayê misilmanan silevê dide, me bêjin tu ne misilman î, heke hon vî îşî qesdane dikin ta ko hon talanê wî bibin, bizanin ko mal û dewleta spehîtir li cem Xuda ye. Bînin bîra xwe, gava hon jî misilman bûne, we mal û canê xwe bi kelima şehadetê, xelas dikirin, piştre Xuda ji kerema xwe, hon gihandin rastiyê û piyê we, li ser riya dînê xwe qaim kir. Xuda bîna, bihistiyar û zana ye, emelê we dizane.

94- Ma kengê mirovên bawermend ko bê mazeret mala xwe de rûdinin, weke şerevaniyên riya Xuda dibin, yên ko bi mal û canê xwe cihadê dikin. Xuda cihê yên ko bi mal û canê xwe cihadê dikin, ji mal rûniştiyan qatek bilintir kiriye. Xuda micahid û mirovên bawermend yên ko ji bêgaviyê di dema şerî de, mala xwe de rûniştine, ji ên din, bi keremên mezin çêtir girtiye.

95- Cihê wan ji ên din bilintir e, ew serfiraz in, piyariya Xuda û efiw û toba wî ji wan re ye. Xuda efiw û toban dide, Xwedê dilnerm e.

96- Ji yên ko li gorî mêranî camêrî ne kirine û azabdarên nefsa xwe bûne û di tengiyê de, dest ji pêxember; û serekên dî xwe berdane, dema mirinê de, melyaket ji wan, wê bipirse: Di dema hicret û cihadê de, hon li kê derê bûn; hon misilman in, an kafir in? Ewê lê vegerînin û bibêjin: Em mirovên bê çare û belangaz in, em ji Mekê der ne ketine, me ne dikarî bû. Melyaket wê bêje wan: Erdê Xuda mezin e, hon çima weke bawermendên din, ji welêt der ne ketine û we zilmê wan kafiran qebûl kiriye. Ew wê demê zendemayî bimînin; mala wan bizdonekan dojeh e; û çûna wan ber bi dojehê ve, çi çûyineke têr êş û ezab e.

97- Bi tenê mirovên qels û jin û zaro, ji ne derketina Mekê berpirsiyar na bin, ji ber ko wan ne dikarî bûn, tevdîra derkitinê ji Mekê, pêk bînin û riya Medînê ên dizî nas bikin.

98- Xuda, ji kerema xwe, di gunehên wan bêçareyan dibore, ji ber ko Xuda efiw û toban dide, Xuda keremkar e.

99- Yên ko di riya Xuda de, ketine welatê xeribiyê, ew cihên sitirandinê û arîkariyê û zadên boş peyda dikin û yên ko ji bo Xwedê û pêxemberê di wî, ji mala xwe derdikevin û dikevin riya mihaciriyê û têde dimirin, sewaba wan li ba Xuda heye; Xuda efiw û toban dide, Xuda dilnerm e.

100- Gava hon di seferê de ne, û ji tirsa destdirêjahiya kafiran nimêjên xwe kurt dikin, ji we re tu guneh nîne; kafir dijminên we ên xedar û aşikare ne.

101- Pexemberê min... gava hon pêşberê dijminan de ne û hon dixwazin nimêja xwe bikin, tu eskerê xwe bike du bir, bila birekî ji wan rabin nimêjê û yê din pêşberê dijminan de, bisekine û hemî jî çekên xwe hilgirin û yên ko bi te re rabûne nimêjê, piştî riketekê herin pêşberê dijminan û destê xwe ji tiştên ko nimêj pê xira dibe bikişînin û birê din bê û bi te re riketa din timam bike, divê ew, bala xwe, her bidin dijminan û çekên xwe ji destê xwe bermedin. Kafir dixwazin ko hon çekê xwe ji destê xwe deynin; bala xwe ne din wan, da ko ew ji nişka ve, bi ser we ve bigirin. Heke hon seba nesaxî, an ji ber baranê çekên xwe hilnagirin, ji we re, ne tu guneh e, lê her hal çavên we li dijminên we be. Xuda ji bo kafiran azabekî dijwar pêk aniye.

102- Ko we, nimêja xwe qeza kir, di rabûn, rûniştin û raketinê de Xudayê xwe her bînin bîra xwe û wextên tenahî û aştiyê de, nimêja xwe di dema wê de û bi ayînên wê, bînin cih, ev ji bawermendan re ferz e.

103- Bi dijminên xwe sist me bin, bikevin pey wan, heke hon ji êşa birînê ditirsin, ew jî weke we, ji ezabê wê, dê tirsiyar bibin, lê di nav beyna we de ferqek heye, hon ji Xudayê xwe hêvîdar in, ew ne wisa ne.

104- Pêxemberê min.... me ji te re Quran, bi hikmên wê ên rast û adil da dahatin, ta ko tu li gora emrê Xuda li ser dehwayên xelkê hikma xwe bidî; xema mirovên bêbext me xwe.

105- Ji Xudayê xwe efiw û toban bixwaze, Xuda efiw û toban dide, Xuda dilovan e.

106- Bi wan mirovan re ko hev û du dixapînin û bêbextiya nefsa xwe dikin bi hev me ke ve, û xema wan me xwe, û bizane ko Xuda ji mirovên nekes û bêbext hez na ke.

107- Ew dildiziyên xwe ji mirovan vedişêrin, lê ew nikarin nefs û nepeniyên xwe ji Xuda veşêrin, û gava ew tiştekî dibêjin ko Xuda pê qail na be, Xuda wan dibihîse û dibîne, zanîna Xuda dora kafir û emelê wan digire.

108- Hon di jiyîn û heyîna dinyayê de, arîkariya bêbextan dikin, lê divê ji bîr me kin, gelo di roja piştdawiyê de li ber Xuda, kî bibe wekîl û arîkarê wan?

109- Yê ko bi kirina tiştekî neçê ezabdarê nefsa xwe dibe û hema tobe dike û efiwa xwe ji Xudayê xwe dixwaze divê bizane ko Xuda xefûr û rehîm e, Xuda di sûçên gunehkaran dibore.

110- Yê ko xirabiyê dike divê bizane ko mirovê xirabê xwe ye. Xuda zana û fêris e.

111- Yê ko xirabiyekê dike û wê davêje ser stoyê mirovekî bêsûç, divê bizane ko wî li xwe guneheke giran û buhtaneke mezin bar kiriye.

112- Pêxemberê min... heke ji feyz û arîkariya Xuda ne buwa, hinên ji wan, tu rêşaş bikirana; lê herwekî roniya Xuda bi te re ye, ew bi tenê nefsa xwe şaş dikin û xwe dixapînin û tu zererê wan na gihe te. Xuda ji te re kitab û hikmet da dahatin û te hînî tiştên ko te ne dizanî kiriye. Kerema Xuda bi awakî mezin gihaye te.

113- Bêtirî civanên wan ên veşartî bê xeyr in, meger ko ew bi dana sedeqê, bi kirina tiştekî qenc an bi lihevanîna mirovan mijûl dibin; yên ko wan tişta ji bo pêkanîna emrên Xuda dikin, divê bizanin, emê sewabeke mezin bi wan bidin.

114- Yê ko piştî aşikarbûna riya rastiyê, guh na de emrên pêxember û berê xwe dide rêkê ko ne riya bawermendan e, em wî, di roja piştdawiyê de dispêrin hevalên wî ên kafir û davêjin dojehê, dojeh çi cihekî têr êş ezab e.

115- Xuda di gunehên mirovên ko tiştine dikin hempa û hevberê wî, na bore; ji vê pê ve heçî guneh hene, Xuda di wan li gora

daxwaza xwe dibore. Yê ko tiştine dike hempa û hevberê Xuda, ew ji rastiyê yekcar dûr ketiye û riya xwe şaş û eqlê xwe winda kiriye.

116- Xelkên Mekê ji Xuda pê ve, ji xaçên xwe re perestişê dikin, ji ber ko ew ji we re dibêjin, xaçên me mîna melyaketa ne û ew keç û dotên Xuda ne; lê ew bi vî awayî banî Şeytên dikin, yê ko li ber Xuda nefsmezinî û pê, jê re isyan kiri bû.

117- Xuda jê re lanet kiriye; Şeytên got: ezê ji evdên te hinan bêxime dehfika xwe;

118- Ezê wan ji riya rastiyê derînim, li gora daxwaza wan ezê jiyîna dirêj bidim wan û bi tiştên ne bi kêrhatî ezê wan bixapînim, tama sefahetê bêxime devê wan û ezê emrê jêkirina guhê heywanan bi wan dim û ezê tiştên welê ko di dema afirandina mirovan de ne nas bû, weke deq kirin û xesandin, bînî wan bikim. Yê ko dest ji Xuda dikişîne û dikeve pey Şeytên, wî bê şik riya xwe şaş kiriye û ew yekcar winda bûye

119- Şeytan, ji we re her tiştî bi dev xweş dike, bi hêviyên pûç we dixapîne, soza xwe dide û wê na gire, bi cih na yêne û nefsmeziniyê dike.

120 Yên ko dikevin pey Şeytan, digehin agirê dojehê û ji xwe re riya xelasê peyda na kin.

121- Yên ko baweriya xwe anîne û tiştên qenc kirine, ew wê bigehin buhuştên têr av û kanî û di wan de her bimînin; ev mizginiya Xuda ye, mizginiya Xuda rast e. Ma gotina kî ji ya Xuda rastir e.

122- Lê mirovên bawermend û xelkê xudankitêb divê bizanin... ew bi gotin û dilxwazan nagehin qenciya Xuda, lê belê bi pêkanîna tiştên çak û hêja. Yên ko neçeyî û xirabiyê dikin divê bizanin ko ew dê berpirsiyar bibin û ji bona wan, ji Xuda pê ve, tu delîl û arîkar nîne.

123- Jin be, mêr be yên ko qencî kirine û misilman in, emê wan bigehînin buhuştê û divê ew bizanin ko ji wan re bi qasî mûyekî jî, neheqîtî na ye kirin.

124- Ma dînê kî ji dînê kesekî çêtir e ko, berê xwe dide Xwedê û tiştên qenc li hev tîne û dikeve pey miletê Ibrahîm, ew Ibrahîmê ko pêxemberê Xuda bû, Xuda qedrê wî digirt û jê re weke hevalekî mêze dikir.

125- Her tiştên erd û ezmanan milkê Xuda ne û qudret û zanîna Xwedê dora her tiştî digire.

126- Ji te mes'ela behra jinan ji mîratê wê bipirsin; bêje wan: xuda li ser wê mes'elê emrên xwe şanî we da û kitêba xwe de jî, hikmên xwe pêş we kir; divê hon adetên dema nezaniyê ji nav hilînin û ji mîratê heqê zaroyan bidin û zaro bi çiqasî biçûk jî bin, para wan, divê hon bi temamî bidin wan; û sêwiyan jî bo xwarina malê wan, ji xwe re mehr me kin, û gava hon sêwiyan mehr dikin, mehra wan li gora adet û edaletê bi wan din, ev ji bo we xeyr e û bîr bin; qenciya ko hon dikin xuda pê dizane.

(Cenabê Emer ji welî û bergerên sêwiyan re şîretan dikir û digot: Heke sêwî spehî û dewlemend in ji xwe re mehr me kin, bidin xelkê, lê heke ew belengaz û kirêt in ji xwe re werînin.)

127- Heke mêr jina xwe diêşîne an nîzikî wê na be an jinek ji qewimandina wan tiştan ditirse û bi tevdirekî mîna dana diyariyekê an kêmkirina mehrê, bixwaze bi mêrê xwe li hev bê, jê re tu guneh nî ne, ji ber ko işê çêtir li hev hatin û aştî ye. Di nefsa mirovan de dexs, çavû bihintengî heye; lê heke hon, jin û mêr qedrê hev digirin û hev û du na êşînin û ji xudayê xwe tirsiyar dibin, bizanin ko xuda emelê we dibîne.

128- Di nav beyna jinên xwe de, hon ni karin tu cara, bi temamî li gora edaletê bimeşin, her çend jî hon mirêkarî bi cih anîna vê edaletê bibin jî; ji qe ne ve rûyê xwe yekcar ji yekê ji wan me zivirînin û di dana nefeqê da, heqê hemiyan bînin bîra xwe, ji bo xweşhaliya hemiyan bixebitin û di vê de neheqîtiyê me kin, ji xudayê xwe tirsiyar bibin û bizanin ko xuda xefûr û rehîm e, ji tobedaran re tobe dide.

ne qediya ye

## Mîrza Mele Elî

*Mîrza Mele Elî, piştî nesaxiyeke kurt, di Kamişliyê de, çûye piyarî û dilovaniya Xwedê, li 16 ê Ilonê sala 1945.*

*Hevalê me ê delal Mela Elî, îmamê Topizê bû. Di sala 1902 de, li Amûdê ji diya xwe bûye. Di xwendegaha Amûdayê de, hînî zanînên destpêkî bûbû, di pişt re, ketî bû zanisteyên Kurdistanê, yên şaristanên Cezîrê, Mêrdîn û Botanê û di sala 1340. de ji seydayê mezin Mela Evdilahê Hîzanî, icaza xwe ji donzde ilûman standi bû.*

*Mîrza Mela Elî bi eqilmendî, bi zanîn û bi kurdperestiya xwe, nav û deng da bû, û li ber dilê xelkê zehf şîrîn bû. Di ser girê gundê Mozanê de hatiye veşartin.*

*M. Dr. Ehmed Nafiz Beg, Evdirehman Axa Sasûnî, Cemil Axa Haco, Şukrî Axa Emînê Perîxan, Arif Beg Ebas, Evdî Axa Xelo, Seyda Mela Ehmed, xortên Amûdê, zehf maqûl û rîspî, û du sed siwar hati bûn ayîna veşartina wî*

*Bi vê hêncetê Mîrza Mihemed Elî û şairê mezin Mîrza Cegerxwîn peyivîne û bi gotinine qîmetgiran qedrê rehmetî girtine û kar û xebatên wî ên girane xistine pêş guhdaran. Xwedê ji kerema xwe bi rehm û dilovanî rûhê Mela şa bike.* E.M.

## Mele Elî

Mele Elî serê xwe siparte axa cebana û berê xwe da dinyake dî û çû !... Di êvarê yekşembê, di pannzdehê mehê de, meha Îlonê sala 1945 an de.

Stêrek ji ezmanê Kurdistanê qurijî, ew Stêr Mele elî bû; rûyê xwe ji me zivirand û derdê welêt digel xwe bir û çû; li ber mirinê, min dey lê kir û got: heval serê xwe rake, Kurdistanê heqê xwe standiye. Devê wî hati bû girtin, lê destê xwe ber bi ezmanê jorî ve, bilind hişt, gelo Seyda li ber mirinê, çi ji Xwedê dixwest ?

Wî dixwest ew deng herî guhê wî da, derdên xwe digel canê şêrîn ji sînga xwe bavêjî. Mele Elî, bê çil û pênc salî, ne dixwest bi vî rengî bimirî; wî ji her tiştî xweştir, mirina li ser çiya û bi berikê dijmina dixwest; şehîdiya riya azahî û serbestiya milet û welêt. Her kes dijminê me ne, lê dijminahiya felekê dijwar e; zend û bendên xwe li me rapêçane û karê xwe û serperçiqandina me dikî, ma dijminê felekê, kengî bi ser xwe tên.

WEŞARTINA WÎ

Li hawîra siwar û otomobîl û li pey wî lehîyek jin û mêr; ji Tirbespî heta Amûdê, li ser gora wî giha bûne hev. Gava te li ser gora wî dinerî yekîtî û pêşveçûna nijadê kurd, dihate ber çavên te; şêx û mela, bag û axa, gundî û xwenda, jin û mêr li ser laşê wî, qêrîn û hawar bû.

Laşê wî, bi aleke kurdî pêçayê û ber bi girê Moza ve dibirin. Gava me ji ser wî da rê; Mîrza Mihemed Elî, berê xwe da me û got: Mele Elî bê xem rakevî, di nav dilên xortan de cihekî bilind ji xwe re hiştiye û bi şeref û namûs xatir ji me xwest û çû. Ş.C.

## Cigareyên Tamdar



# PÊJINÊN DINYAYÈ



*Libnan; Libnan î aza û serbest, libnan î çak û xemrevîn. Libnan erdê kanî û daristan, erdê fêkî û gulçîcekan, erdê xweşî û kamiraniyê ye; welatiyên me ên delal, kurdên sûriye, Irap, Îran, Tirkye û sovyetistanê werin dîtina me, werin dîtina Libnanê.*

**Nûçegihayê me ji Cizîrê dinivîse:**

# MIHAFIZÊ NU

*Mihafizê Cezîrê ê nû Evdilqadir Beg Meydanî hatiye ser karê xwe.. Di erdê Hesîceyê de, xelk bi piranî çûne pêrgîna wî, di nav wan de maqulên Kamişlî, Hesîçe û nimînendeyên eşîrên Milî û Pinar Elî jî hebûn.*

*Cezîrê hewcedarî dest û hişine zana ye; ev erd dikare bibe bihûştek. Hêviya me ji Mihafizê Nû berî her tiştî eve ko bi himeta wî, rahetî vegere welêt û teşxeleyên ko di nav bira Kikî-Begare û Mersînî-Cibûr, çêbû bûn; careke din çê ne bin.*

*Evdilqadir Beg Mîdanî bi zanîn û hinerweriya xwe nas e, karên dewletê dizane û bi izna Xwedê di riya pêşveçûnê de, ji me re wê bibe arîkarekî hêja. Em jê re dibêjin tu bi xêr hatî; em hemî arîkarên te ne, tu jî bibe arîkarê me, da ko ev erdê şîrin bigehe kamiraniyê; ji pengav û nesaxiyan xalas bibe; bi xwendegah û reyine baş, bi xestexane û febrîqeyan bête xemilandin û bi tava edaletê bête ronî kirin.*

## Midîrê Amûdê

*Me bi dilxweşî seh kiriye ko Midîrê Amûdê ê nû Şakir Beg, ciwanmêrekî zehf hêja ye û karê xelkê sivik dike, qedrê wan digire û bi her awayî bi kêrî milet tê. Em spasên xwe pêşkeşî wî dikin û jê re miwefeqiyetine mezin dixwazin.*

# COTKARÊN ME

*Îsal gundî û cotkarên me zehf perîşan in; hêviya me ji hikûmetê eve ko li gora taqetê, bi destê Banqeya Ziraî, arîkariga van, divê bête kirin. Em qail in ko hikamet dixwaze bi her awayî bi kêrî xelkê bê.*

## Hemê Musê

Weyil, weyil, weyil, Hemo Keko weylê... dilê min li dîn e, sed carî li dîn e, mi di sibehê, bi kubara sibehê re, Şarê derdikeve ser banê bircê; dorbînê li ber çavê xwe datînê; bi deşta Berêzê dimeyizînê; nêrî ko obakî ji obayên ereba, kohnê di rêşê erebî, di deşta Berêzê de vegirtî ne; mi dî Têlî-Şehrê bi sê denga kire gazî, go Hemo, keko, xwedê; xwedê bike, ezê di dû çavê kekê xwe Hemê re, kiraskî melesî, kitanekî kaxetî, şarkî amûdî na qetînim; ezê çiqas xiyal û bala xwe didim deşta mîrata Berêzê, deşteke şîn e, mi dî konê reş î erebî tê de vegirtî ne, kohnekî reş î erebî li perê kona ye, sê xort di bin vî konî de rûniştî ne; li serê wana şar û temezî ne, li pişta wan girêdayî, piştî sal î, di ecemîne; di ber wan de, xencerê qapilme, xerzanî ne; li destê wan de ye, şeşxaneyên botanî ne, ewan her sê xortan; li Berêzê, li ber hêsiya konê reşê erebî rûniştî ne, bi qumarê dileyizin; hay ji bayê felekê tu nî ne.

Mi dî Hemê Mûsê; bi sê denga kire gazî; ban dikir Têlî-Şarî, xwakê, bi xwedê qet hay û hesabê kekê te ji wan peya tu nî ne; ewan peya ne ê şer û xewxa ne, ê şayî û dawetan e, heker tu yeqîn na kî, hatine ribekê xwe, ji ciwaniyê mala bavê te bikşînin...

Mi dî, Têlî-Şarî, sê denga kire gazî; go weyil, weyil, Hemo, keko weyil; xwedê bike ezê di dû çavê kekê xwe Hemê re, li dinyayê ez ne mînim....

Hîn xalxala Hemo, di devê wî de ye; nerî carkê, mij û dûmanê, ji binê berîka jêrîn, ji pozê kaniya Rês-el- Eynê, ji hewhewê pozê çiyayê Şingalê; mij û dûmanê hevdu hilanîne; selefek siwara, ji jêrî ve, têne, dilezîne; ez çiqas dinerim, nanerim, ez ne ma zanim ewan siwara kî û kî ne; ez ne ma zanim; ewan siwara ne siwarê mala Zalê ne; ne ji mala Eyûbê Temir Paşa î zengozêrînin. xwedê hebîna; Têlî-Şarê; tu rabe durbînê bîne; ezê li ber çavê xwe deynim; saxlixê van siwara hilînim.

Dûrbîn li ber çavê xwe danî; li binê beriya jêrî li selefê siwara dimeyizîne, nerî sê siwar in, ji jêrî ve têne, dilezînin; siwarê pêşî mehîneke qumêtî, sêsalî di bin de ye, li bayê bezê; tûmê mîrata xernûbê difirînê; her du siwarê diduyayê; dikin na kin, bi hêla bezê; bi siwarê pêşî re, na qedînin. Hin xalxalê Hemê, di devê wî de ye; nêrî li ber hêşiya kohnê reşê erebî, guha ha, ho li Hemê; fêrisê welatê Şamê; kilê çavê Tir kimanê: kevirê kozikê, risasê erdê... şevgerê nîvê şevê...

*Ezîzê MERZIKA*

## Hemê Gozê

De lê da, de lê da; pozberano de lê da; şerwalşîno de lê da; mi dî bi Eliyê Yûnis ve, qeymeqamê Zoqê ve, çawişê Almedîna ve, bi Bişarê Çeto ve, Qewmê çiyê ve, topa Reşkota ve, li kozka Koraniyê da, dilê min helak e, sed carî helak e ...

Mi dî bi Eliyê Yûnis ve, qeymeqamê Zoqê ve, bi Bişarê Çeto ve, di ser kozka Koraniyê de, girtine tifaq e. Mi dî matlîka destê Hemê Gozê, ji êvara xwedê de, şaq. şaq e, mi dî Hemê Gozê, sê denga ban dikir, dayê dêranê, mi sûnd xwariye, bi sûnda mehkemê, bi sûnda jinberdanê, mi sûnd dixwar bi telaq e; ezê ji kozik û meterisê, Kozikê Koraniyê na livim, heger tu yeqîn na kî; lingê min di qeydê de, destê min li ser sûrma matliyê de, ezê ji kozik û meterisê na livim; miftê qeydê, ji xwe re li cem min e; li cem apê min î Yûnis; di hebsa bêxwediya Stewrê de; li holiya jorîn, di bêrika xeftanê mi de, di mîrata pencerê de; de lê da pozberano de lêda .....

Mi dî dêka Hemê Gozê, bi sê denga ban kir, Hemo, lawo de hela; sed carî bi mi hela... ezê kozkê, ji ferxê mala bavê xwe re çêkim, ji kevira û kelpîça; sê payî bê xwediyê Şela...

Mi dî, Hemê Gozê, bi sê denga ban kir, dayê dêranê, ez Hemê me; ez Hemê gozê me, ez kevirê kozikê, risasê erdê me, ez melkemotê mewtê me, şevgêrê nîvê şevê me; ez kekê Têlî-Şehrê me; ez deqmoqê navçavê Canbêzarê deşta Mûşê me, ez gurê roja qewamê me; dayê dêranê.....

*Ezîzê Merzika*

## EMAN, EMAN!...

Eman, eman, eman, eman; mi dî buhar hatî çaxê dilketin û kêfê; kêf û henek xweş in, li ser xaniya, li ser doşekê; li bin lihêfê. Mi dî buhar hatî, caxê kerengvaniya, xwezla min î bi wê gavê; min cihê xwe û bejna zirav, li banê bilind, tev de, daniya; gava mamûrê firara derketa nav Omerya, min ê, navê xelkê delal, ji çîtika reş hilaniya...

Ber derîkê mala bavê min bi sergo ye; kûçikê Kanos gelkî no ye; xera dikir civanê bi ro ye; gidî bazê dila, ez li ser rêkê, tu li ser rêkê; ji xelkê we ye, ez û tu ji bav û dêkê; heçî di nav beyna her dilê şîrîn xeber bidê, xwedê bikê, girê ne dê; fitla şarê li ber mirêkê.

Ez li banê, û tu li banê; mihbeta dila şîrîn e, tu ni zanî.

*Ezîzkî Merziê*

## Berdolavî

*Mi dî Stêra Sibehê, Stêra Kuruxê li me zer da, mi dî li me şîn kir, gihayê çolê, nebatê hemû erda; kuro lawiko, mi dî şevê çûyî, bavê mi sewlekê, di bazara min û te xeber da; mi dî li me zer da Stêra Kuruxê, şewqa xwe da bû, qesr û qonaxê Hemkê Hamo, pikê Tenurlixê; lawiko mi dî mamûrê firara, derket nav eşîrê, sebra dilê min Onbaşî ye, ezê jê re rabim selamlixê; ezê bi çemê jêrî ketim sîka hewr û biya, ezê banî ketim çemê jorî biner li xoxa li hincaza, sê parê mîratê şifteliya; xwezî ezê bibûma kevokek ji kevokên neqişandî ezê biçûma ser devê rêka mehkûm û firaran, sê eşqiyan.*

Ezîrê MERZIKÎ

# MIRÊKA CIHANÊ



*Germanistan bûye welatekî belengaz û perîşan. Xelk di perên behrê de hêviya hûr û mûran de ne, ko pêlên avê davêjinê. Ev perav ji şaristanê elemanî Hambûrg, 8 kilomêtir dûr e; dê û bav çûne nêçîra comerdiya behrê; lavê wan nobetdariya tişt û miştên ko hatine anîn û kom kirin dike; di zivistanê de, çend perçeyên rijû ko tê de ne, germî wê bide tifikê. Eve kar û dawiya zorkeriyê.*



Dergehek ji yên şaristanê Pragê. Payetextê Çokoslovakyayê Prag, bajarekî gelek qedim û spehî ye. Têde sê zanîngeh hene. Xelkê çekoslovakyayê zehf hinerwer û xebatker in, çfredestiya hosteyên çekoslovakî dilrubane; pîpok, kasik, bilûr, mekîne û çek û silehên vî welatî bi nav û deng in.



*Avahiyên seygonê bi her awayî ji yên Welatên Roavayî ne kêmtir in; lê divê nayê ji bîr kirin ko di vê pêşveçûnê de, para Ewripayiya zehf mezin e: di bervehatina vî welatî de; himeta sinhet û zanîna frensizî karine hêja pêk aniye.*

3ème ANNÉE LUNDI 15 OCTOBRE 1945 NUMÉRO 60

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél. : 74-04 et 84-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur-Propriétaire : EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 25 P.L.S. - Abonnement :
Liban-Syrie 25 L.L.S. Etranger 4 L. Stgs.

## LA "CHARTE" DU PEUPLE KURDE.

Nous avons reçu plusieurs numéros de la Revue Kurde « *Azadi* », qui est l'organe du parti communiste kurde d'Irak. Le N° 2 de cette Revue qui compte habituellement 6 ou 8 pages publie le « *Peyman* » du peuple kurde, mot que l'on pourrait traduire par serment, pacte ou même charte. C'est un document du plus haut intérêt et que nous mettons avec plaisir sous les yeux de nos lecteurs.

Le programme esquissé ici ne laisse de côté aucun aspect du problème qui travaille — non seulement les Kurdes — mais tous les peuples qui sont épris de liberté. Vie politique et sociale, progrès économique et développement culturel : tout a été envisage et ce nous est une véritable joie de constater que de jeunes Kurdes ont nettement pris conscience de la gravité et de l'importance de ces questions dont la solution ne peut plus être retardée. Et précisément ce qu'il y a remarquable dans ce manifeste, c'est que la solution est examinée par ces Kurdes en harmonie avec les Arabes près desquels ils vivent et dont les aspirations sur tant de points sont identiques Loin de nuire donc à l'entente fraternelle entre Kurdes et Arabes la réponse entrevue s'ingénie plutôt à renforcer la fraternité des deux peuples : ce qui ne peut que favoriser la paix dans cette région du monde.

Les Kurdes, on le sait. n'ont jamais été fanatiques en religion et, laissés à eux-mêmes, ils ont toujours vécu en bonne intelligence avec leurs voisins qui ne partagent pas leur foi musulmane. L'article 15 proclame la reconnaissance des droits ethniques et religieux de toutes les minorités du Kurdistan : cela n'étonnera personne.

L'instruction qui est la pierre de touche des peuples civilisés ne pouvait être laissée dans l'ombre dans un programme de revendications qui vise à être complet. Et de fait les articles 11 et 14 expriment les desiderata sur ce point. L'article 11 en particulier qui demande l'introduction de méthodes facilitant la lecture nous a été sensiblement agréable, car cela fait allusion, semble-t-il, à l'emploi des caractères latins pour notre langue qui est une langue indo-européenne. Si notre interprétation est exacte, ce sera la preuve que nos efforts dans le sens de la latinisation de l'écriture accomplis dans notre Journal et les efforts de nos confrères *Hawar*, *Ronahî*, *Riya Taze* sont enfin couronnés de succès.

### La Charte du Peuple Kurde.

1. — Compréhension réciproque et renforcement de la fraternité entre Kurdes et Arabes; sur la base de la libération de ces deux peuples. - Collaboration avec tous les Arabes libres, avec le parti communiste irakien, en vue de la liberté et du bonheur du peuple et de la réalisation des aspirations des Kurdes et des Arabes.

2. — Collaboration en vue d'obtenir la Liberté des peuples Kurde et Arabe et l'indépendance réelle — et non verbale — de l'Irak.

3. — Collaboration en vue d'établir un Gouvernement qui serve le peuple, sur une base démocratique, avec un Parlement et des Conseils municipaux dont les membres soient élus par le peuple et le représentent effectivement, — et en vue de supprimer les Décrets et Lois non-conformes à l'esprit de la Constitution irakienne.

4.— Octroi au peuple kurde du droit de former des associations politiques et non politiques, d'exprimer librement ses opinions, de tenir des réunions publiques, d'imprimer journaux, revues et livres, sans contrôle injuste.

5. — Développement économique des régions kurdes et établissement de fabriques et d'industries dans le Kurdistan. — Exploitation des ressources naturelles du pays en vue du bonheur et de l'enrichissement du peuple. — Renouvellement des méthodes d'agriculture, exploitation rationnelle et moderne du sol pour assurer le bien-être du peuple et empêcher tout accaparement de la part du Gouvernement, des individus et des trusts. — Vente libre des produits kurdes. — Création de réseaux routiers pour assurer la vente.

6. — Sauvegarde des terres des paysans et distribution des terres appartenant à l'Etat à ceux qui les cultivent personnellement — Répartition aux paysans des terres occupées par les aghas. Constitution de syndicats agricoles pour libérer les paysans des mains des usuriers.

(suite en page 3)

## LA CITADELLE DE KHURS

L'Histoire du Kurdistan est pleine de récits de luttes entre tribus dont les chefs se disputent la primauté ou de conflits entre Emirs essayant d'imposer leur autorité et Aghas qui veulent garder leur indépendance. Ces épisodes d'une vie mouvementée ont été gardés de façon plus ou moins fragmentaire et pittoresque dans les chansons de guerre si nombreuses en Kurdistan et qui constituent, pourrait-on dire, comme les Archives du peuple Kurde.

Les faits d'armes qui y sont chantés ne sont peut-être pas toujours de la plus haute importance ; les héros qu'on y célèbre n'eurent peut-être pas une renommée qui franchît de beaucoup les frontières de leurs propres tribus ; mais si la valeur proprement historique de ces chants reste médiocre, l'intérêt psychologique demeure appréciable. On y retrouve, en effet, les anciennes coutumes, dont certaines ont disparu ; on y voit conservées des expressions devenues rares aujourd'hui, — et tout cela reconstitue, à sa manière, l'atmosphère où vivaient autrefois les Kurdes.

* * *

La chanson dont nous offrons aujourd'hui la traduction est intéressante à ce point de vue.

Le texte Kurde en a été publié dans la Revue *Ronahî* (n° 27, p. 543-545), telle qu'elle est chantée par un dengbêj des *Heverkan*. C'est CEMIL HACO, chef actuel de la tribu, qui en a donné le texte.

Une autre chanson sur le même sujet — preuve que l'épisode eut quelque importance à l'époque — fut publiée naguère dans la Revue *Hawar* (n° 13, p. 361). Beaucoup plus courte que celle que nous allons traduire, puisqu'elle ne comporte que 31 stiques, elle a pourtant l'avantage de contenir plus de noms propres, en particulier plus de noms de lieux : ce qui permet d'éclaircir notre texte grâce à ces données historiques et géographiques.

* * *

L'événement se passe au temps de l'Emir de Botan, Chah Mihemed Beg. Ce ne peut être que le fameux Mihemed Beg (1740), connu pour être un chasseur extraordinaire. Il se faisait appeler le « Seigneur des Chasseurs ». Il avait de même réussi à faire croire à son peuple naïf qu'il était en relation avec le Prince des Péris, dont il avait épousé la fille qu'il visitait régulièrement dans une caverne de la montagne et qui lui avait donné plusieurs enfants ! M. R. LESCOT, nous a fait connaître dans *Hawar* (n° 29, page 465-468) certains détails amusants de « *La légende de Mîr Mohammad* ».

Des autres personnages cités dans la chanson de Hawar : Ismaîl Agha, Hemdan, Qûçî Beg, nous ne savons rien.

Quant à Elî Hemanê qui est le héros de l'histoire, voici les renseignements que j'ai pu trouver sur lui. Il était un des chefs ou même, à l'époque, le chef des *Jêliyan* et habitait le village de *Goyînan* qui comptait autrefois 300 maisons, mais n'en a plus maintenant que 70. C'était, de beaucoup, le plus gros village de la tribu. « Goyînan était le village de Elî Hemanê. La maison de Elî Hemanê, chez les Jêlîyan, est une maison ancienne. Le village est au bas d'un mamelon, sa situation est élevée, à ses pieds coule une profonde rivière. En face du village se dresse une haute montagne, au sommet de laquelle est érigée une citadelle, qui est le lieu de refuge du village. On l'appelle « citadelle de Elî Hemanê », car c'est là qu'il habitait ». (HEREKOL AZIZAN, *Estra Jêlîyan*, dans Hawar, n° 34, p. 541).

Il y a deux KHURS au Kurdistan : l'un dans le vilayet de Mardine, l'autre au Botan. C'est évidemment de celui-ci qu'il s'agit dans notre texte, Je crois même que la citadelle de Khurs n'est pas autre chose que cette forteresse de Elî Hemanê dont elle aurait pris le nom après que son chef l'eût illustrée par un siège qui dura longtemps. En tout cas sa situation correspond bien à la description que nous en fait le chansonnier. La défaite du chef et son exil aurait, par la suite, entraîné la décadence du village.

(suite en page 2)

POÈME KURDE

### DANS LE CIEL

*Hier*
*Ma nuit était brève,*
*Mais un rêve*
*Long et profond*
*M'éloigna de la terre,*
*Dépassant les limites des nuages,*
*Les rayons des orages,*
*Les pays des étoiles,*
*La poitrine du ciel couverte d'un voile*
*Fin et bleuâtre,*
*Comme un rideau de théatre,*
*L'alcôve de la lune et le trône du soleil,*
*J'allais vers l'infini.*

*Un sang jeune agitait mes veines*
*J'avais la force d'un être divin.*
*Tout d'un coup*
*Une voix grave et lourde*
*Comme un marteau sur un clou*
*M'arrêta.*
*— Toi, messager du monde :*
*On blâme l'océan pour ses ondes,*
*Les montagnes pour leurs flammes*
*Pour sa candeur la femme.*

*Je te donne un instant ma force divine*
*Pense, sens, devine*
*Ce qui peut vous rendre heureux*
*Fais-le,*
*Je te donne le pouvoir.*
*Si tu veux, transforme les rochers en ivoire*
*Abolis le malheur,*
*Change tout*
*Mets à l'arc de la vie une autre roue.*
*Cette voix était grave, la voix d'un père*

*Qui crie à sa fille adultère.*
*J'ai répondu :*
*Père,*
*Sur la terre*
*Tu m'as mal choisi,*
*Je suis un homme qui a été aimé.*

# LA CITADELLE DE KHURS

*(suite de la page 1)*

Quoi qu'il en soit, c'est bien, semble-t-il chez les *Jêliyan* que se passa l'aventure. En effet, les *Jêliyan.* qui sont une des tribus sédentaires du Botan, étaient les voisins des *Keran*, clients de Mir Mihemed, et des *Mûsan*, dont parle aussi la chanson. La plaine de *Misar* est bien sur le territoire de la tribu, où nous introduit le défilé de *Gamês*, mentionné également.

* * *

La chanson compte 88 stiques, partagés en 17 strophes, plus ou moins régulières, si on se base sur les rimes pour les distinguer. Mais on sait que les chansons kurdes n'ont rien de bien précis en ce domaine.

Comme souvent, c'est un dialogue. Il s'engage entre l'Emir du Botan et l'Agha rétractaire. Cette forme dialoguée convient parfaitement aux troubadours Kurdes qui ordinairement sont deux à se faire la réplique.

Notre chant forme un véritable diptyque (vers 1-42 ; 43-88), que des vers similaires, en des strophes qui riment en *ant* permettent de distinguer nettement :

Un Emir s'est levé, en son temps, en puissance (vers 84).

Emir du Botan, tu es, en ton époque, un Souverain puissant (vers 41).

L'Emir du Botan se leva en sa puissance (vers 84).

De plus, dans la première partie le couplet commence habituellement par la formule : « L'Emir a dit...» suivi de la réplique : « Elî Hemanê répondit...», tandis qu'à partir du stique 45 la formule se transforme et débute par les mots : « La Citadelle de Khurs...». Cette variante d'introduction est la preuve que l'on change aussi de sujet. En effet, jusqu'alors, on a surtout parlé des motifs de la guerre. L'Agha et les gens de Khurs refusent de payer le tribut — en argent — à l'Emir du Botan. Ils reconnaissent bien qu'ils ont, de tout temps, été les hommes d'armes fidèles de l'Emir et de sa famille ; mais ils sont eux-mêmes de famille noble et ils considèrent comme une déchéance de verser de l'argent : cela ne s'est jamais fait ! Et ils ne sont pas du tout décidés à céder à la force.

C'est donc la guerre. Aussi le ton change ainsi que la formule d'introduction. Cette guerre durera sept ans... Deux stiques nous le disent et on ajoute tout aussitôt que Elî Hemanê a été vaincu. Peut-être y a-t-il ici une lacune dans notre texte. C'est l'avis de l'Emir Celadet Bedr-Xan. De fait, les péripéties de la lutte sont entièrement passées sous silence. De suite, on arrive au dénouement de l'aventure.

Durant cette longue période d'hostilité, Elî Hemanê a fait beaucoup de victimes et l'Emir du Botan qui vient de le vaincre ne peut guère l'absoudre. Il n'est même pas d'avis de le laisser s'enfuir comme un meurtrier obligé de quitter sa tribu pour éviter une mort certaine. D'autre part le vaincu est un grand chef, et le fait d'avoir pu tenir tête pendant si longtemps au Souverain du Botan mérite bien quelque considération. Chah Mihemed réunit donc le Conseil de ses Preux qui tombent d'accord pour soumettre au Jugement de Dieu l'Agha enfin abattu. Debout sur les remparts de sa citadelle, face à son vainqueur, le héros malheureux lui servira de cible. Si à la troisième « balle de chance » il n'a pas été touché, il sera libre et pourra profiter du privilège des meurtriers : on lui laisse la vie sauve, mais il doit s'exiler.

Tel est le thème de la seconde partie de la chanson.

* * *

Epargné par le destin. Elî Hemanê se réfugia à *Kertewên*, village des Heverkan, au nord de Nisibin. Au bout de quelques années, tombé dans la plus noire misère, il résolut d'aller avec ses fils assassiner l'Emir du Botan. Celui-ci était endormi dans sa chambre lorsqu'ils parvinrent chez lui. Elî Hemanê, pénétrant dans l'appartement, s'empara de la pipe de l'Emir et de son sac à tabac. A leur place, il déposa sa propre pipe toute crasseuse et son sac à lui qui ne contenait, le pauvre! que des écorces de tamarin. Puis il plaça sur l'oreiller, tout près de la tête du Souverain, deux balles avec leur charge de poudre et il se retira.

A son réveil, l'Emir aperçut la pipe, le sac à tabac et les cartouches. Après quelques instants de réflexion, il se dit que ce ne pouvait être qu'un coup de Elî Hemanê. De suite il comprit que son ancien ennemi devait être dans le besoin. Il appela donc ses valets et les envoya d'urgence à la recherche du malheureux. Après enquête, il le découvrirent à Kertewên et en informèrent l'Emir qui le fit chercher.

Les traditions diffèrent sur la fin de l'histoire. D'après les Heverkan, lorsque les valets de l'Emir retrouvèrent Elî Hemanê, celui-ci, tombé gravement malade après leur premier départ, était mort et enterré.

L'Emir Celadet Bedr-Xan, sur la foi d'autres rumeurs, croit que Elî Hemanê alla effectivement chez l'Emir du Botan qui l'accueillit très aimablement. Il y serait resté jusqu'à sa mort. Mais, en souvenir des bons jours passés chez les Heverkan, il aurait exprimé le désir d'être enseveli parmi eux, en sa seconde Patrie. En tout cas, son tombeau s'élève encore sur la colline de Kertewên.

Mais Dieu est le plus savant !

## TRADUCTION

Un Emir s'est levé, en son temps, en puissance.

Chah Mihemed Beg a levé les 14 Tribus du Botan

Et il les a campées contre la citadelle de Khurs, contre la Maison de Elî Hemanê.

Chah Mihemed Beg a dit : « Que Dieu ne n'envoie pas un « firman » (1).

Car, moi, je m'en vais amener sur la Maison de Elî Hemanê une chose telle que Dieu n'en a jamais envoyée de pareille sur la tête de personne ! »

Et pour finir Mihemed Beg dit : « Je sais que vous êtes de Khurs, que vous êtes six maisons et douze chefs.

Jusqu'ici vous n'avez jamais vu l'épée des Emirs sur votre tête ! » .

— Elî Hemanê répondit : « Oh ! Emir du Botan, la citadelle de Khurs est bâtie près d'une rivière.

Tu as fait passer le bruit des fusillades de Botan, avec les 14 Tribus, sur nous, en rafales...

Souverain du Botan, vous êtes notre Souverain, nous sommes les esclaves de vos souliers ! »

— L'Emir du Botan dit : « Elî Hemanê, pourquoi ne veux-tu pas faire une chose propre ?

Si vous êtes nos esclaves, pourquoi cette année est-elle la septième que la citadelle de Khurs n'a payé ni tribut ni taxe ? »

— Elî Hemanê s'écria : « C'est ainsi !

Mais n'as-tu pas interrogé tes ancêtres et les anciens ( pour savoir ) que la Maison de Elî Hemanê constitue vos spadassins depuis toujours ? »

— L'Emir dit : « La citadelle de Khurs est une citadelle à glacis !

J'ai interrogé les ancêtres et les anciens : la Maison de Elî Hemanê sont des Aghas !

Oui, je sais que depuis toujours vous êtes les spadassins des Emirs du Botan. »

— Elî Hemanê répondit : «Prince du Botan, par moi et par cette montée,

Si tu sais que nous sommes vos spadassins, pourquoi nous réclames-tu donc tribut et taxe ? »

— L'Emir dit : « Il fait chaud, c'est l'été !

Je sais parfaitement que vous êtes nos spadassins, mais, de mon temps, nous n'avons jamais eu de comptes à régler ! »

— Elî Hemanê dit : « Emir du Botan, je suis perdu dans le tourbillon du monde (2)

Depuis le jour où votre postérité est apparue sur terre,

Au grand jamais, impôt ou taxe n'a été prélevé sur nous par force.

Emir, nous sommes de Khurs, nous sommes six maisons et douze chefs,

Mais jamais nous n'avons vu l'épée des Emirs brandie par force sur notre tête.

Car, depuis le jour où nous sommes nés, nous sommes une tribu libre!»

— L'Emir du Botan appela Elî Hemanê et lui dit : « Pourquoi n'agis-tu pas ainsi ?

Si vous êtes nos spadassins, pourquoi n'acceptez-vous pas notre souveraineté comme les Botaniens ?

Ne sais-tu pas que si tu ne paies pas le tribut et l'impot de la citadelle de Khurs,

Mihemed Beg n'accepte plus de toi cette attitude ? »

— Elî Hemanê dit : « Mon Emir, je jure sur ton front que je n'agirai pas ainsi.

Je jure sur le front de l'Emir du Botan que je n'accepterai pas cette souveraineté ! »

L'Emir du Botan appela et dit : « Elî Hemanê, c'est le matin, le soleil nous éclaire tous deux.

Si tu ne paies pas le tribut et la taxe de la citadelle de Khurs, je ferai crouler la citadelle de Khurs sur les petits et sur les grands !»

— De nouveau Elî Hemanê cria et dit : « Je suis Elî, Elî-le-Petit !

La nuit, en sept moules je fonds des balles ; le jour, en sept mortiers, j'écrase la poudre.

Par le front de l'Emir du Botan, une fois du plus, je ne bougerai pas devant les soldats du Botan.

De nouveau les Preux du Botan revêtirent leurs peaux de tigre ;

L'Emir fit entendre sa voix aux 14 Tribus du Botan : la fusillade crépita.

Emir du Botan, tu es, en ton époque, un Souverain puissant !

De nouveau Elî Hemanê fit entendre sa voix aux 14 Compagnons de Elî Hemanê !

* * *

---

*(1) Un «firman» est ordinairement un Ordre Impérial du sultan. Mais c'est très souvent un ordre de mise à mort, un ordre d'extermination. C'est ainsi que le «firman des Arméniens» était l'ordre de les supprimer. Ici Mihemed Beg souhaite que Dieu lui laisse suffisamment de vie pour pouvoir subjuguer son vassal récalcitrant.*

*(2) L'expression : « Je suis perdu dans le tourbillon du monde » signifie ici : « J'ai perdu la tête. Je risque donc d'exagérer dans ce que je vais dire ».*

Sal — 3 Hejmar — 63

Duşemb 26 Çiriya Paşîn 1945

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 35 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 4 lîreyên inglîzî. Bihayê Hejmarekê; 25 Qemerî.

# ROJA NÛ

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc: Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74-04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

## TEHRAN DIDE ZANIN

Li gora nûçeyên ko ji Tehranê tên, xelkê Azirbîcanî; erdê Îranê ê bakurî, li hikûmetê rabûne û di vî erdî de, teşxeleyine mezin çêbûne û peyayên sileh bi dest ber bi Tehranê ve dimeşin. Hikûmeta Îranê du tabûr esker şiyandine pêşiya qiwetên ko ber bi payetextî ve tên. Radyoya Emerîkanî dide zanîn ko qiwetên silehbidest yên ko dixwazin erdê xwe ji yê Iranê veqetînin gihane dera ko ji Tehranê bitenê 120 kilomêtir dûr e.

Ji aliyê din, li gora telegrafên ko ji Enqerê tên û ejensa A.F.P. belav dike, ji kurdên tirkyayê qiwetine mezin, ketine erdê Îranê û hatine arîkariya kurdên Îran û Iraqê; yên ko di Kurdistana Îranê de kom bûne û hêj kom dibin. Nûçeyên dawîn didin zanîn ko 15.000 eskerên kurd di Kurdistana Îranê de, xwe pêk anîne.

## KURDISTANA IRANÊ

Rojnameyên Tehranê ên dawîn yên ko gihane destê me, mîna Seba, Eres û Îranê Kinûnî, zehf qala xebata kurdên Kurdistana Îranê dikin. Li gora van rojnaman, hemî kurdên Îranê istiqlala Kurdistanê û danîna Kurdistaneke mezin dixwazin û ji bona vê armancê xebateke zor dixebitin.

Kurdên Îranê ev bîst sal in, ji hikûmeta Îranê çend tişt dixwestin. Wan dixwest ko mêmûr û karkerên axa Kurdistana Îranê ji kurdan bêne bijartin; wan dixwest ko di xwendegahên erdê Kurdistanê de, seyda û mamoste dersa zaroyan bi zimanê kurdî bibêjin û zimanê kurdî di hemî xwendegahan de, bête xwendin; wan dixwest ko sê çaryekên wêrguyan ko ji kurdan têne standin, di axa Kurdistanê de, ji bona çêkirina pir û rê; xestexane, xwendegah, gundine nû û nûjen bête serf kirin.

Lê heyf e ko Hikûmeta Îranê guh ne dida daxwaza xelkên Kurdistanê û kurdên ko bi navê miletê xwe ev tişt dixwestin dihatin girtin, dihatin êşandin û zehf caran jî dihatin kuştin. Herwekî dawıya zilm û neheqiyê nîne; û hemî miletên cihanê hîn bi hîn, û her û her çavê xwe vedikin, û doz û dehwa heq û qevneyê xwe dikin, kurdên Îranê jî, êdî serbestî û istiqlala Kurdistana ko di destê hikûmeta Îranê de ye, dixwazin û ji bona vî tiştî, dikin her fidakariyê bikin.

Heta berî bi sê salan, di axa Îranê de, kovar, rojname û kitêbên kurdî bend û yesax bûn. Piştî ko eskerên rûsî û ingilîzî ketine axa Îranê, kurd hinik bihna xwe standine û di nav van sê salan de, ji xwe re kovar û rojnameyine hêja derêxistine; mîna Peyam, Çiya, Niştiman, Kûhistan, Tirûske, Zegros, û û Yekîtiya Têgûşîn.

Li gora rojnameyên Tehranê kurd, ji bona xwestina istiqlala Kurdistanê zehf bîranî qedimandine dewletên mezin û kurdên Îranê dixwazin ko Şertê Etlentîkê û qeydeyên ko Hevalbendan li ser azahî û serbestiya miletan danîne qenciya xwe, kevnedarî û rastmendiya xwe bigihînin miletê kurd in, û kurd jî jê heq û para xwe bibin.

Rojname û ejensên cihanê qala daxwazên kurdan kirine û li gora nûçeyên dawîn Mela Mistefa Paşa, komandar Izzet Ebdilezîz, kapten Mîr Hec, kapten Mistefa Xoşnaw, Ewiqat Hemze Ebdilah, kapten Ezîz Ebdilah, kapten Celal Emîn, mihendiz Nûrî Ehmed Taha, kapten Xeyrilah, kapten Bekir, mihendiz Mihemed Qidsî, û pêncî mirexes û nimînende û minewerên kurd bi du hezar peyan, xwe gihandine kurdên Iranê û doz û dehwa istiqlala kurdistanê dikin.

Ji aliyê din; hikûmetên ko lihevhatina Sadabadê mor kirine, dikin ciwanek deynin û bi daxwazên kurdên Iran, Iraq û Tirkyayê, mijûl bibin û bidin eqlê xwe bi çi awayî dikarin riya Istiqlala Kurdistanê bigirin. Rojnameyên Tehranê ji aliyê din, bi zimanekî gelek hişk dirêjî miletê kurd dikin û dibêjin ko heke hewce ye bi dara zorê divê kurd bêne sekinandin; lê wilo dixuye ko kurdên Îranê guhnadine zimandirêjiya van rojnaman û didin zanîn, ko dema heq û edaletê hatiye, xurtî û çavsorî, di pêşiya heq û edaletê de, bê qedir û qîmet in, û zorker çiqas mezin jî bin, dawiya wan nîne û qesda miletê kurd ev e ko dike heqê xwe bistîne û pê neheqiyê ji ortê hilîne, û dostaniyeke nû, dostaniyeke qaim deyne nav bira miletê kurd û ecem hemî cîranan.

---

## Feqîr Elî

Bavê wêna jê diqehire, karê keçikê her roj wilo jê re dibêje; Siltan pir jê qehiriye. Rojekê di vê xeberê de ne, carkê nerîn Feqîr Elî ket devê derî.

Siltan nerî, ko kesek jê feqîrtir hêj ne hatiye cem wî. Jê re go: kuro were vir; Feqîr Elî qedimî ba wî, Siltan jê re got: ya Feqîr, çi te heye? Feqîr go: tiştekî min tu ne? kulmek axa min tu ne ye!

Siltan jê re go: were destê min, mi keçka xwe da te! Feqîr go: ji serê min zêde ye, du caran jê re got, Feqîr dibêje, ji serê min zêde ye. Cara sisiya, wezîr, destê xwe danî, ser devê Feqîr; û jê re got: kuro here destê wî; heger tu ne re wê serê te jêke!

Feqîr destê Siltan maçî kir, Siltan jî, ji cêriyên xwe re got: herin çekê qîzê jê bikin, hinik qetiyayî lêkin, ez binerim bê, kî wek min heye, bila wan xwedî bike!

Kuncilê keçikê jê kirin, hinik qetiyayî lê kirin, destê wê xistin ê Feqîr Elî û dehfik dan wana, di derenca wer kirin û gotin: de herin îcar.. Feqîr rûnişt û giriya û ji keçikê re dibê: xweha min, ez hatim ko bavê te danekê bide min, tu ji mi'r bû bele.. ez nikarim xwe xwedî bikim, ezê çawan îcar xwe û te bi xwedî bikim. Keçikê jê re got: rabe ser xwe, Xwedê mezin e, ê ko min û te bi xwedî bike heye.

Feqîr rabû ser xwe, û bi hev re meşiyan, daketin çarçiyê; Feqîr pars ji xwe re kir, wê şevê tiştê ko anî xwarin, li ber dîwarekî razan heya sibehê.

Sibehê, kerwan bi rê ket ko here Helebê, Feqîr Elî go: ya qîza delal, kerwan va ye, wê here Helebê, ez li vê derkê nikarim parsê jî bikim, wê xelkê me nas bikin, wê bêjin ev zavê Siltan e; parsê bikim kêmaniye, lazim e ni herin Helebê.

Keçikê jê re got: kû de tu herî, ezê bi te re! Bi kerwên re meşiyan, gihane Helebê, keçikê ji Feqîr re got: ezê çawan bi te re, bêm nav çarçiyê, bigerim, û em kesî nas na kin. Lazim tu herî berî ji me re cikî bibînî ko em lê razin, û piştre were min bibe. Feqîr jê re got: baş e, tu li vê derê, ezê herim.

Feqîr çû nav çarçiyê, giha ber dikana yekî beqal, go: ji bo Xwedê tu cih li cem te tu nene ko em, lê razin.

Ê beqal jê re got: Hecî Ebdela heye ko feqîra dehewîne, here cem wîna, wê odakê bide te, heya tu li vê derê bî, xwarina te jî, rojê sê wexta, wê bide te.

Kêfa Feqîr hat û jê re got: mala te ava!... Ez mala wî nasna kim, ê beqal lawê xwe pê re şand, mala Hecî Ebdelah, pêş kiriye, feqîr çû cem Hecî Ebdilah destê wîna maçî kir û jê re got: xwehek min heye, me divê tu me bihewînî.

Hecî Ebdela jê re got: ser çava; here xweha xwe bîne; mifta Odê dayê; û jê re got: rojê sê wexta were xwarina xwe bibe! Kêfa Feqîr hat, çû xweha xwe anî, di Odê de rûniştin, rojê sê wexta xwarina xwe tîne.

Çend rojekî man, keçikê ji Feqîr re got: here ji xwe re li çarçiyê bigere, belkî Xwedê sebebekê ji te re bişîne.

Feqîr go: baş e, daket ji xwe re li çarçiyê digere, carekê nêrî ko kerwanek li ber deriyê xanê barê di xwe datînin. Feqîr ji xwe re got: ezê herim alîkariya wan bikim, belkî tiştekî bidin min.

Çû alîkariya wana kir, barê wan datîne, mezinê bazirgên, navê wî Hecî Elî ye; lê nerî go; ev Feqîr lawikekî hêja ye, jê re got: kuro, tu bi mi re nayî, bi salê bişixule, ezê heqê te bidime te.

Feqîr Elî jê re got: belê, tu ê sala min çi bidî min!

Go: ezê sala te hezar qirûşê bidim te û t'ê bixwî û çekê te li ser min! Feqîr jê re go: baş e, belê ezê herim bi xweha xwe bişêwirim; heke go here, ezê bêm.

Hecî Elî mensefek xwarin dayê û gotiyê: here, bi xweha xwe bişêwire, heke go here, were sibehê emê herin, û heke ne hişt tu bê, mensefa me ji me re werîne, tu zora me li te nîne. Feqîr Elî rahişt mensefa xwe û bir cem xweha xwe; xweha wî nerî ko mensefek goşt û birinc va ye aniye.

Xweha wî got: rovîkî geriyayî, ji şerekî razayî çêtir e, heger tu ne çûna, wê ev xwarin ji kû bibata...

Feqîr jê re got: tiştekî din li cem min heye, va ye, mi ji xwe re şixulek dî ye, yekî tacir, ji mi re dibêje, sala te bi hezar qirûşî, ez hatime, bi te bişêwirim; keçikê jê re got: baş e, here cem wî, jê re bêje kanî nîvê meaşê min, bide min, ezê ji xweha xwe re bibim û êdî bela bimîne; heya sala me biqede.

Heger da te, bîne û pê re here; heger ne da te me re, rizqê me li Xwedê.

Feqîr vegeriya cem Hecî Elî ê tacir, mensefa wî dayê, jê re şertên xwe go. Hecî Elî nîvê meaşê wî dayê û go: de here, sibehê were.

Feqîr hat cem xweha xwe, meaşê xwe dayê, keçikê jê re got: here cem hecî Ebdela, jê re bêje, ezê va herim, xweha mi wê li cem te be.

Feqîr çû cem Hecî Ebdela jê re got: ya hecî, ezê va herim, çavê te li xweha mi be! Hetayî wê wextê Hecî Ebdela xweha wî ne dîti bû.

Go: here xweha xwe bîne, ezê bibînim. Feqîr hat xweha xwe, bir cem Hecî Ebdela, gava Hecî Ebdela xweha wî dî, pir qehirî, şeqamek li Feqîr xist û jê re go: te ji mi re gotiye xweha mi feqîreke weke mi ne, çi stêle ye ko ev di vî halî de he.

Roja ewil ko tu hatî, te ji mi re goti bûna minê cîkî xweş bidana we.

Ev keçik, keçka mezina xuya ye, de xem na ke, here, dilê te bela rahet be; ev keçik ma keçka me; û di pêsira xwe re kişandin û kirin keça xwe. Feqîr çû cem ê tacir û barêd xwe bar kirin û meşiyan; berê xwe dane Bexdê.

Bîrik heye di Kerbelê de, heçî kerwanê ko ji Bexdê û ji Stenbolê û ji Helebê tên, li wê derê digihiştin ser hev.

Ew bîr kesik ne wêre dakeviyê, heçî dadikeviyê sax venagere. Her sê kerwan, gihane wê şevê ser wê bîrê. Barê di xwe danîn, delêlî ban kir, heçî dakeve bîrê, avê ji heywana re derxînê, emê pêncî mecîdî bidine wî.

Feqîr got: bi Xwedê ezê dakevimê, ma sala mi, hemî bi pêncî mecîdî ye, ev saetik e, ezê dakevim bîrê, bi pêncî mecîdî. Rabû ser xwe, Hecî Elî jê re got: ez na hêlim tu herî..

Fepîr jê re got: ezê herim, heke ez vegeriyam sax, ezê pêncî mecîdî bistînim, heke ez mirim tu bistîne ê ko te dayê min jê hilîn, û ê mayî bişîne ji xweha mi re.

Çû ser devê bîrê, şerît pê ve girêdan, daxistin bîrê. Gava giha carekî li miqabil xwe nêrî, dî ko pîrek heye. çiçikên di wê li pişta wê ne; pişta pîrê li wî ye. go: ha, a ko xelkê dikuje ev e; hêdî çû ji par re, çiçikên di wê xistin devê xwe.

Pîrê jê re got: tu ma lawê min! De here avê ji wan re dagire û ji wan re bêje, sibehê pêncî mecîdî heye an tu ne ye, heger ko heye, bê şev ez di bîrê de razim, were cem diya xwe, tu şev mehvanê min î. Feqîr av ji ehlên kerwana re dagirt, ji wan re got: sibehê honê, pêncî mecîdî cardî bidine mi, heya ko ez dakevim bîrê; jê re gotin erê.

Feqîr got: ko wisa ye, ezê îşev di bîrê de razêm.

ne qediyaye

# Tefsîra Quranê

173- Gelî mirovino... ji bal xudayê we, ji we re delîl û hicetên mezin hatin û xuda ji we re ronahiyeke aşikare da dahatin.

174- Lê yên ko baweriya xwe anîne û xwe avêtine bextê xuda û destên xwe ji gunehan kişandine emê wan bigehînin kerem û piyariya xwe û bikin riya rastiyê.

175 Pêxemberê min... ji te pirsa para mîretxweran dê bikin bêje: Emrê xuda ev e, heke mîrathiştê ne dê û bav û ne jî zaro dihêle ji mîratê wî xweh û birayên wî bi awayî jêrîn behremend dibin: heke mîrathişte ji dê û bav an ji bav xweheke dihêle, nîvê mîratî jê re ye; heke mîrathişte jinek e û ji dê û bav an ji bav birayek dihêle mîrat gî jê re ye. Heke dido an zêdetir xwehên wî hene ew du sêyekên mîratî dibin; heke bira û xwehên wî hene ji mîratî para birayan dido a xwehan yek e. Ev emrên xuda ne, xuda hikmên xwe pêş me dike, heta ko hon xeletan me kin. xuda her tiştî dizane.

## Sûreyê Sifrê

### Sed û bîst û sê ayet in, di Medînê de dahatiye.

**Bi navê Xudayê Pak Ê Dilovan û Mihrivan**

1 - Gelî bawermendino... ji soz û gotina xwe vemegerin, qedrê wan bigirin, pirsên xwe xira me kin.

2 - Ji we re goştê heywanên çarpê helal e, ji wan pê ve ko emê herambûna wan pêş ve bikin û goştê nêçîrê ko di dema Heramê de dikin, ji we re heram e. Xuda li gora daxwaza xwe emrê xwe dide.

3 - Gelî bawermendino... destdirêjiya qeyde û ayînên Hecê me kin, bi kuştin û talanî ewleyiya meha miheremê û ewleyiya mirovên ko qesda Hecê kirine û pê ji kerema Xuda hêvîdar dibin û riza Xuda dixwazin xira me kin û wan metirsînin û toq,kap, beristo û şînok û hîvokên heywanan ko di hecê de wê bênê şerjêkirin, xira me kin.

Gava hec diqede û hon ehramê ji xwe dikin, heke dixwazin dikarin êdî herin nêçîrê; hon, ji miletê ko riya Mescidê Heramê girti bû, enirîn; xwe bigirin dirêjî wan me kin û gunehkar me bin; qenciyê pêk bînin û arîkariya qencîkeran bikin, ji xirabiyê dest bikişînin û arîkarê gunehkar û fitnekaran me bin; ji Xudayê xwe tirsiyar bibin û bizanin ko Xuda bi awakî dijwar diêşîne.

4 - Goştê heywanên mirî,xwîna heywanên şerjêkirî ko rijihaye, goştê beraz û goştê heywanên ko ne bi anîna navê Xuda; lê bi anîna navekî din hatine şerjêkirin û goştê heywanên xeniqandî ji we re heram e.

Goştê heywanên ko ji lêdanê, bi lê dana quloçê heywanên din, bî qetandina cinawiran; an bi ketinê mirine, ji we re heram e, meger ko hon berî mirina wan bigehîne wan, û wan şerjê bikin, vê gavê goştê wan ji we re helal dibe. Goştê heywanên ko bi anîna navê pûtekî hatine şerjêkirin jî, ji we re heram e. Leyistina qumarê û remlê jî ji we re heram e, ev tiştên neçê ne. Kafir herwekî sehkirine ko hon, ne niho,û ne didawiyê de dest ji dînê xwe bernadin û na kevin pey wan; pê dilê wan kafiran reş bûye û ew qehirîne; hon ne ji wan lê ji min bitirsin.

Êdî hikmên dînê we aşikar bûne û bi tewayî hatine danîn û me qencî û nîmeta xwe bi timamî gihande we, me ji we re dînê islamê kiriye dînê heq û dînê çêtir; dînê islam dînê heq e û dînê çêtir ev e. Heke mirovekî ji tiştên jorîn ko me ji we re heram kiriye, ne seba tam û hejkirina wan; lê di dema tengiyê de ji neçariyê hinik xwar, bila bizane ko Xuda xefûr, fêris û dilovan e û di gunehên evdên xwe dibore.

5 - Ji te wê bipirsin, xwarina çi tiştan ji me re hate helal kirin? Bêje : xwarina goştê heywanên ko bi anîna navê Xwedê hatine şerjêkirin û goştê nêçîrên ko heywanên we ên hînkirî weke bazih û seyên nêçîrê bi emrê we û ji bo we digirin, ji we re hate helal kirin; lê heywanên we divê li gora emrê Xwedê bêne hînkirin ango çûn û hatinê de guh bidin we û dest bi xwarina nêçîrê me kin.

Navê Xuda bînin û piştre heywanên xwe bişînin nêçîrê û berî şerjêkirina heywanên nêçîrkirî, navê Xuda bînin û ji Xudayê xwe tirsiyar bibin û bizanin ko Xuda lez û bez hisabê xwe dike.

6 - Îro, goştê heywanên ko hon bi anîna navê Xuda şerjê dikin ji we re helal bûye û ji we re xwarina xudankitêban û ji wan re, xwarina we hate helel kirin; û anîna jinên cuhî û file ên pak û binamûs jî, bi şertê ko honê mehra wan bidin, ji we re helal bûye, ta ko hon bi mehrkirina wan, destê xwe ji zinakariya dizî û aşikare bikişînin û xwe ji gunehan bidin paş û mirovên baş bibin;yê ko emr û fermanênXuda inkar dike, bila bizane: qenciyên ko wî kirine jî; pûç dibin û ew dikevin xisarê; bêemriya Xuda me kin.

7 - Gelî bawermendino.. beriya ko hon rabin nimêjê, destlimêja xwe a piçûk rakin; destmêja piçûk bi niyet û bi şuştina temamê rû û her du destan heta enîşkan, destdana serî û bi şuştina her du piyan heta gozekan pêk tê. Heke hon bi cinûbe ne; beriya nimêjê divê destlimêja xwe a mezin jî rakin. Rakirina destlimêja mezin bi niyet û bi şuştina dirn û devî û temamê laşî pêk te. Heke hon ne sax in an bi reyek ve diçin û ji we re seba derketina tiştekî ji her du riyan an bi nêzikbûna jinan rakirina destmêja mezin an biçûk ferz dibe û av na keve dest, an ji ber sebebekê giran; her çend jî hon dixwazin; anîn an pêda kirina avê ji destê we na ye teyemimê bikin. Teyemim bi axa pak tê rakirin; mirov divê bi axa pak destên xwe heta enişkan û rûyê xwe bifirikîne. Xuda ji kerema xwe na xwaze îşê we giran bike û ji ber vê yekê paqijbûna we bi teyemimê ferman kiriye û destûra xwe daye; ev nîmeta Xuda ye, qenciya wî bînin bîra xwe da ko hon pê şikirdar bibin.

8 - Nîmet û qenciyên Xuda û ehda ko di nav bira we û wî de hate kirin bînin bîra xwe û ji bîr me kin wê dema ko we got: me bihist û me bindestiya wî kir. Ji Xudayê xwe tirsiyar bibin; Xuda qencî û xirabiya dilê mirovan dizane.

9 - Gelî bawermendino... Hon her li ber Xuda ne, divê kirina we li gora edaletê û gotina we li gora rastiyê be. (Qenciyê bikin û rastiyê bêjin). Gava şehdetiyê didin dest ji rastiyê bermedin, di gotina rastiyê de bê tirs û perwa pê bidin erdê.

Divê kîn û erna we, we nexapîne, di heqê kafirekî de be jî; ko hon jê dienitin, dev ji rastiyê bermedin, li gora edaletê rastiyê bêjin û neheqîtiyê me kin, di heqê dijmin û mezinên xwe de jî; bêtirs û perwa rastiyê bêjin. Bizanin ko bi gotina rastiyê û kirina edaletê mirov digehe baweriyê û bi berdana wan jê ve diqete. Xuda emelê we dizane.

10 - Xuda ji mirovên bawemend re û ji qencîkeran re mizgîniya xweşiyê û efiwa xwe daye.

11 - Yên ko kafir bûne û ayetên me inkar kirine ew ji xelkên dojehê ne û tê de her dimînin.

12 - Gelî bawermendino... qencî û nîmeta Xuda û wê dema ko miletekî dixwest direjî we bike û Xuda ji kerema xwe destê wan ji we da bi şûnda kişandin bînin bîra xwe, ji Xudayê xwe bitirsin û bizanin ko mirovên bawermend divê nefsa xwe bispêrin Xuda.

13 - Lawên Israîl ji Xuda ra sund xwar, wî ji wan diwanzde rêber da bijartin û Xuda gote wan: Heke hon radibin nimêjê, zekata xwe didin, baweriya xwe bi pêxemberê min tînin, qedrê wan digirin, arîkarê wan dibin û di riya Xuda de ji malê xwe comerdiyê dikin, di şer û kuştinê de ez arîkarê we me. Ez gunehên we efiw û we ji wan paqij dikim û we digehînim buhuştên têr av û kanî. Yên ji we ko ji vê paşî kafir dibin divê bizanin ko ji rastiyê yekcar dûr ketine.

14 - Herwekî wan ehda xwe xira kirine, Xuda wan ji piyariya xwe qewirandin û dilê wan hişk kirin; wan gotinên kitêba xwe gohartin û şehdetiya kitêba xwe, li ser mizgîniya hatina bezma Muhemed avêtin pişt guhê xwe û ji bîra kirin. Tu, wê seh bikî piraniya wan çawan bêbextî kirine; çendekên ji wan xwedî bext bûn û baweriya xwe anîne; tu li qisûra wan me nêre û di sûçên wan bibore û bizane ko Xuda ji qencîkeran hez dike.

15 - Yên ko goti bûn, em file ne, wan jî ji me re sund xwarin û soz dan ko ew pêxemberîtiya şandiyên Xuda wê tesdîq bikin, lê ew piştre li gora emrên kitêba xwe Incîlê ne meşiyane, ji ber vê yekê, me dijminîtî xist di nav beyna wan de, û ew heta roja piştdawiyê bi hev kevin; Xuda bê şik wan berpirsiyar bike û bi dana cezayê emelê wan ê kirêt wê bêxe pêşiya wan.

16 - Gelî xudankitêbino... me pêxemberê xwe şandiye ta ko ew piraniya hikmên kitabê ko we vedişart, pêş we bike û di hin kikmên wê jî bibore.

17 - Ji nik Xuda ji we re roniyeke zelal, roniya Bezma Muhemed û rastiyeke aşikare, Qurana Mezin hat.

18 - Yên ko li gora emr û fermanê Xuda dimeşin, Xuda wan ji şik û kufrê dertêxe û digihîne roniya baweriyê û dike ser riya rastiyê.

19 - Yên ko gotine, Xuda, Mesîh kurê Meryemê ye, ew kafir bûne; bêje: heke Xuda bixwesta dikarî bû, Îsa kurê Meryemê û diya wî û her kesê ko li ser erdê ye mehiw bike; ma kî dikarî bû destê Xuda bigere ? Her tiştên erd û ezmanan û her tiştên ko di nav bira wan de ne milkê Xuda ne, ew her kesê ko dixwaze dixuliqîne û ew bi her tiştî dikare.

20 - Cuhî û filan got: em kurên Xuda û delalên wî ne. Bêje: heke we re ye, çima Xuda we seba gunehên we diêşîne? No.. ne we re ye; hon jî weke mirovên din ji evdên Xuda ne. Xuda her kesê ko dixwaze digehîne efiwa xwe û her kesê ko dixwaze diêşîne. Her tiştên erd û ezmanan û her tiştên ko di nav bira wan de ne, milkê Xuda ne û hemî vedigerin ba Xwedê.

21 - Gelî xudankitêbino... di dema qutabûna hatina şandiyên Xuda de, me ji we re pêxemberê xwe Mihemed rêkir, ta ko hon di roja piştdawiyê de me bêjin, ji me re pêxemberek ne hatiye û çavê me bi mizgînî û cezayên Xuda venekiriye. Ji ber vê yekê me ji we re pêxemberê xwe şandiye, ew mizgîniya qencîkeran dide û mirovên xerab bi cezayî ditirsîne, Xuda bi her tiştî dikare.

22 - Wê demê bînin bîra xwe.... Mûsa ji qewmê xwe re goti bû, gelî mirovino.... qenciya ko Xwedê bi we kiriye bînin bîra xwe, Xuda ji we re, ji we, pêxember şandin û padişah dan bijartin û ji we re tiştine welê da ko beriya we; wî ji tu kesî re, ne da bû.

23 - Gelî mirovino... bikevin erdê miqedes, welatê Qidis û Şamê û dora wan, Xuda axa wan dera kiriye qismeta we û ji tirsa zaliman bi şûnda vemegerin, heke we li gora vî emrî ne kir, bizanin ko hon, ji dinya û axiretê bê par dimînin, dibin şerpeze û dikevin xisranê,

24 - Wan got: di wî welatî de miletekî zalim û xedar heye, heta ew ji wê derê derkeve, em na kevinê; ko derketin em dikevinê.

25 - Ji wana du mirovên ba-

wermend, ko ji Xudayê xwe tirsiyar bûn gotin: ji dergehê wî welatî bikevin hundurê wî, her çend jî xelkên wî ziremêr in, dilê wan sist e, bi izna Xwedê honê zora wan bibin û wan jê derînin.

26 - Wan bi ser ve zêdekir û got: heke hon bawermend in, ji Xudayê xwe ewle bibin û xwe bispêrin wî.

27 - Cuhiyan got: ho Mûsa... heta ko ew jê derkevin, em tu cara na kevinê... Tu û Xudayê xwe herin û dirêjî wan bikin. Binêre... em vê derê rûniştîne.

28 - Mûsa ji Xudayê xwe re got: Xudayê min, ez ji nefsa xwe û ji ya birayê xwe Harûn ber pirsiyar im, birayê min bi ya min dike; tu me êdî ji vî miletî me hesibîne.

29 - Xuda ji Mûsa re got: min welatê Qids û Şamê û dora wan welatan ji vî miletî re heram kiriye, êdî bila ew çil sala di beriya Tihê de perîşan û zendemayî bimînin, tu jî xema wan bêbextan me xwe.

30 - Pêxemberê min... ji xudankitêban re qiseya Habil û Qabil kurê Ademî, li gora rastiyê bide zanîn. Gava her yekî ji wan ji Xuda re qurbanek anîn, Xuda qurbana Habil qebûl kir, lê ya Qabil qebûl ne kir. Qabil ji Habil re got: ezê te her hal bikujim, Habil lê vegerand û got: Xuda qurbana mirovên ko jê tirsiyar in qebûl dike.

31 - Habil ji Qabil re got: heke tu ji bo kuştina min destê xwe dirêjî min jî bikî, ez ji bo kuştina te, destê xwe hilnayênim, ji ber ko ez ji Xudanê erd û ezmanan tirsiyar im.

32 - Ez dixwazim ko tu gunehên min û xwe hilgirî û ji xelkên dojehê bibî, peyayên zalim û xedar cezayê xwe di dojehê de dibînin.

33 - Qabil guhdariya ern û xeyda xwe kir, ji ber xwe ket û birayê xwe kuşt, dîn û dinyayê xwe, dawî û axireta xwe xira kir.

## Li Cizîrê

**Nûçegihayê me dinivîse:**

*— Di Cezîrê de baranine boş û xurt bariyane û pê rûyê gundî û cotkaran keniyaye.*

*— Sefîrê Sovyetistanê li Şamê Mîrza Solod hatiye xwalirxwaziya Cezîrê; em jê re li ser çavan hatî dibêjin. Mîrza Solod şîv li ba Mihafizê Dêra Zorê ê giranqîmet Xalib Beg Mîrzo xwariye û çavê xwe li bajar û avahiyên Dêra Zorê gerandine û piştre hatiye Heseçe û Kamişlûkê û dotira rojê vegeriyaye Şamê.*

*— Mifetişê Cezîrê ê zanîn û xwendegahan bi xeyreteke xweş dixebite, bi himeta wî, di Heseçe û Kamişlûkê de, ji bona xwendegahine nû, çar avahî hatine kirê kirin.*

*Ji aliyê din, xwendegahên Derbasiye, Amûde, Serê Kanî û Dêrikê hatine firehtir, û sinfên wan bêtir kirin.*

*— Ji bona bedenparêziyê li zehf deran de meydanine spehî dê bêne çêkirin.*

*— Bi himeta mifetiş 300 textebend 20 mase, 20 depreş, 10 dolab, û 50 rûniştek hatine rêkirin xwendegahên Cezîrê.*

## MIRIYÊN KO VEJIYANE

Ma mirî jî vedijin? Fen û kitêban gotiye ko mirî navejin. Lê jê re jî awarte heye. Kitabên miqedes didin zanîn ko Îsa pêxember, piştî ko cihiyan ew bi dar ve kir û veşart, ji tirba xwe rabû û çû ezmanan.

Miriyên ko em dikin vejandina wan ji xwendevanên xwe re bidin zanîn mirîne nemirî ne.

Li bajarê Misrê zarokekî dwanzdeh salî winda bû bû. Bavê wî, piştî ko qederekî lê geriya elam da polîsan. Wê rojê jî tramwayê pê li du zarokan kirî bû. Polîsan bav birin xestexanê û ew zarok pêş wî kirin. Can û serçavên zarokan pelixî bûn. Digel vê hindê bav di wan zarokan de kurê xwe nas kir û cendekê yekî hilanî û anî mal û elam da mirov û nasên xwe. Şîna wî girêdan û zarok veşartin.

Çend roj ketin navê. Wextê nîvro, xelkê malê li ber taetê bûn. Ji nişkekê ve derî vebû û lawikê mirî ji derî ve da.

xelkê malê tirsiyan. Ma kurê wan bû bû seytanqûnî? Ji ber baz dan û xwe dan paş. Ayeta Kursî dixwendin. Ma kurê wan ê masûm ewçend gunehkarbû bû ko bibe şeytanqûnî.

Dawî, lawik ji xelkê xwe re da zanîn ko berî çend rojan bêî ko xeber bide wan çû bû gundê xwalê xwe û îro jê vegeriya bû.

Dê û bav bi kurê xwe ê vejiyayî şabûn, lê bav li mesrefa cenazê diket. Rabû çû xestexanê da ko wan peran ji xestexanê bistîne. Bav digot: Ma kê ji we re gotiye ko veşartina miriyê xelkê li ser min e.

Şagirtên dibistana tibiyê di dora masa teşrihê de li hev giha bûn hev. Roja dersa teşrihê bû. Seyda Kêrik bi destî ve kete hundirê dersxanê û çarik ji ser cendek rakir.

Wextê seyda ker da laşê mirî, xwîn jê viziqî Seyda xwe ji cendek daye paş.

Ma ji cendekê miriyan xwîn diviziqe; xwîna miriyan cemidî ye. Ev bû bûn bîst û çar saet ko cendek hatibû teşrîxana dibistana tibiyê. Cendekekî yekî feqîr û bêxwedî.

Ji xwe gelek ne borî cendek xwe tev da û mirî rabû ser xwe û li seyda û şagirtan sekinî.

Ma çawan mirî vejiya bû. Mirî ne vejiya bû lê mêrik ne miri bû; bi tenê dilê wî ji bîr ve çû bû. Nîştera seyda xwîna wî tev da bû û hişê wî anî bû serî.

Ma şik heye ko heke mêrik ne î feqîr biwa û cendekê wî ne sipartana teşrîxana dibistanê wê zindî bihata veşartin.

Di bajarekî Ewropayê de zelamekî dewlemevd miri bû. Herwekî di wan weletan de adet e bêî ko mirî bişon ciline nû lê kirin û ew xistin nav tabûtekî de û dora tabûtê bi gul û kulîlkan xemilandin û gihandin dêrê; qereberixeke mezin jî pê re.

Li dêrê keşê ayîna miriyan çêkir, û dia miriyan jê re xwend û ava miqedes li rûyê wî reşand.

Dikirin ko tabûtê rakin, bêxin erebekê de û bibin gornistanê. Ji nişkekê ve mirî xwe tev da û rabû ser xwe. xelkê ji derê baz da.

Mêrik bi mirina derewîn keti bû; çend dilopên ava keşê ên honik ew hişyar kiri bûn.

## MIRÊKA CIHANÊ



*Ji avahiyên Seygonê Qesreke çeleng. Erdên Rohelatê Dûr, erdên Hindistan, Çîn û Hindiçîniyê bi qesr û payedarî û bi ibadetgehên xwe ên spehî bi nav û deng in.*



*Rome, payetextê Italyayê; şaristanek ji yên erdê Ewripayê î qedîmtir.*

**Strana kurdî :**

# LO SIWARO!

*Lo siwaro, lo siwaro; kedera dilê min; egîdo, xweşmêro, maqulo, dawîdaro; mi dî Lîfê bi sê denga kire gazî, go: lê Nûrê, lê Nûrê; Xwedê hebîna tu rabe, bi lezkî bilezîne; Şînbozê, mehîna bavê xwe, ji tewlê bi derîne; teng bertengê Şînbozê bi qayîşê mîriyê çep û rast bişidîne; kurk û hewraniyê bavê xwe li nav milê wî xînê, modelîka devzirav bi destê bavê xwe bigihîne, bila Hesê Brahîm, bavê Nûrêlê siwar be, bila berê xwe bide qeseba bajarê Almedîna, bila mefrezak eskerê cimhûrî ji Almedîna biderxînê; bila bê, heft sala tehqîbata mala Remîm bike; bila mezina bigirê, bi eskeriyê xînê, bila berê wan bide Paxirmadenê, heft salan eskeriyê bi wana biqedînê; wê xelkê bibêjin, ev nîşana bêbextiyê ye; bila heyfa bav û kala ji mala Remîm hilînê !....*

*Wê gavê, Nûrê Şînbozê ji tewlê bi der tînê, teng û bertengê Şînbozê dişidînê, kurk û hewraniyê bavê xwe di nav milê wî datînê; modelîka devzirav bi destê bavê xwe digihînê; mi dî Hesê Brahîm, bavê Nûrê, kekê Melo, cinê siwaran, hêçê mêra, siwar bû, berê xwe da, qeseba bajarê Almedîna; li ser pişta Hemra dajo, hay ji bayê felekê tu nîne.*

*Mi dî Lîfê bi sê denga kire gazî, digo: lê Nûrê, Xwedê hebîna tu rabe, bi bezkê bilezînê, miftê li sendûqa ezrûmê xînê, dûrbînê ji dêka xwe re bînê, ezê li ber çavê xwe ê rastê deynim, ezê pêşiya Hese Brahîm bavê Nûrê, kekê Melo, Cinê Siwaran, Hêçê Mêran, ezê teftîş bikim; tirsa min ê ji wê tirsê, hinik ji wan kûçikê neyaran; kemînê li pêşiyê Hesê Brahîm, bavê Nûrê deynin, wê bikujin Hese Brahîm, bavê Nûrê; wê çira mala bavê min, yetama Xwedê, ji êvar de, bitefînin. Mi dî Nûrê rabû, miftê li sendûqa ezrûmê dixînê, dorbînê ji dêka xwe re tînê, Lîfê li ber çavê xwe datînê, dinêre li neqeba Bûkê; li Quçika li riya xopana Almedîna dimeyizînê; nêrî ko sê peya li neqeba Bûkê, li pêşiya Hese Brahîm, bavê Nûrê rûniştine; mi dî Lîfê bi sê denga kire gazî, go: lê Nûrê, porkurê: ez çiqas dimeyizînim na meyizînim, sê peya li pêşiya bavê Nûrê, li neqeba Bûkê rûniştîne, ez ne ma zanim, ewan her sê peya kî û kî ne ! ...*

*Heydîka Nûrê radihêjê dûrîbînê li ber çavê xwe datînê, dinêre li Quçika li neqeba Bûkê, li her sê peya dimeyizînê; Nûrê bi sê denga kire gazî, go: Lîfê, porkurê, nemayê, ewan her sê peyan, peyayê pêşî Emînê Perîxanê ye, peyayê bi dû da Osmanê Mîrze ye, peyayê diwayî Mecîdê Seyman e; her sê peya li pêşiya bavê Nûrê rûniştî ne, bi sê kemînê giran e.*

*Mi dî, Lîfê bi sê denga kire gazî, digo: Nûrê, porkurê, nemayê; Xwedê hebîna tu ê rabê, qasidkî bi dû bavê Nûrê de bişînê; bila malumatê bidyê; belkî tu bavê Nûrê ji ser vê kemînê vegerînê !...*

*Gava ko Hesê Brahîm, bavê Nûrê bi miqabil neqeba Bûkê dikevê, Emînê Perîxanê bi sê denga ban kir Mecîdê Segman; digo: lawo, Mecîdê Segman, tu bejn û bala bavê Nûrê bi çavê serê xwe dibînê; Xwedê hebîna tu enişka çepê li erdê biçikînê, tu enişka rastê li qundaxa modeliyê bişidînê, çavê çepê bigirê, ê rastê li nîşanê bisekinînê; derbebê berde bejn û bala Hese Brahîm bavê Nûrê, tu bi derba ewil ra, dil û gurçikê ji kezeba reş bifirînê; heke tu bi derba ewil ra, dil û gurçikê Hese Brahîm ne firînê: gava lê diqewime, roja qewamê min gelek caran, derbê Hese Brahîm bi çavê serê xwe dinê: kum û kolosê bolanî li devê xwe datînê, êrîş dike ser kozikê neyara: ez şahidê wî me: destê xwe li qepla xencera qapilme dişidînê, modeliyê bişûnda davêjê; û êrîş dike ser kozikê neyara, bi qepla xencerê, gelek modeliya ji destên gelek kurên ciwanmêra ji kozik û meterisa bi der tînê !....*

*Mi dî Emînê Perîxanê bi sê dengan kire gazî, ban dikir Mecîdê Segman, lawo, Xwedê hebîna tu rabe enişka çepê li erdê biçikînê, û enişka a rastê li qundaxa modeliyê bişidînê; çavê çepê bigirê, ê rastê li ser nîşanê bişkînînê derbek berde bejn û bala Hese Brahîm, bavê Nûrê, tu bi derba ewil ra, dil û gurçikê û parîkê ji kezeba reş bifirînê!...*

*Mecîdê Segman radibe, enişka çepê li erdê diçikîne, derbek davêje, Hese Brahîm, bavê Nûrê, kekê Melo, Cinê siwaran, hêçê mêran, bi derba ewil re, dil û gurçik û parîkê ji kezeba reş difirînê...*

*Gava Hese Brahîm, bavê Nûrê bi sê denga kire gazî, ban dikir Emînê Perîxanê; lawo, mi di bextê d... te n..... xwezil ne bi şuxla bêbextî bûna, l'ê derbê Hese brahîm, bavê Nûrê bi çavê serê xwe bidîna ...*

*Dilê min hêr e, bi sed carî hêr e; mi dî sibehê bi kubara sibehê re hate ciwaba nexeyrê: mi dî Lîfê bi sê denga kire gazî; digo Nûrê, porkurê, nemayê: mi dî Hese Brahîm brîndar e; ez ne ma zanim ji par re, ne jî pêr re; mi dî Nûrê bi sê denga kire gazî, digo; lê Yadê golinên fitne û fesûda, Hese Brahîm, golina ko tu dibêjî tu ne: Hese brahîm çûye tehqîbata mala Remîm dike li bajêr e.*

**Dengbêj : Ezîzk**

# PÊJINÊN DINYAYÊ



Şaristanên Ewripayê mirêkên pêşveçûna vê erdê ne.



Kurdek wê bibêje ev e gola Wanê û çiyayê me'ê bilind û miqedes Ararat; payedariya azahî û serbestiya Kurdistanê.

# Rojnamevanekî Misrî

## Qala Kurdistanê û doz û dehwa wê dike

Rojnama Misrî, El-Misrî de, nivîsevanê erebî Mehmûd Ezmî beg dinivîse: Pirsa Azirbîcanî, ji ya kurdistanê nikare bête veqetandin. Di Sovyetistanê de, nîzîkahî ve 170.000 kurd hene; ew bi zimanê xwe dixwînin û dinivisînin û karên welatê xwe bi destê xwe digerînin; ew xwedî idareke xas in. Ev erd tenişta kurdistanên Tirkye, Iraq û Îranê de ye. Hêj, di destpêka şerê mezin ê 1914-1918 an de, kurd perçeyên erdê kurdistanê dixwestin bigehînin hev û dû û ji xwe re hikûmeteke kurdî a misteqil deynin; û van tu caran dest ji armanca azahiyê bernedane û ji bona xelasiya xwe ji nîrên hikûmetên biyanî her û her xebitîne. Miletê Kurd bi eşq û hesret li pêşveçûna kurdên Sovyetistanê û li tiştên ko ji bona kurdan di Sovyetistanê de hatine çêkirin, dinêrin. Azirbîcan tenişta Kurdistana Iranê de ye; û ji xwe agirê biserxwebûna kurdan li Iraqê; bitenê ev çend roj in ko vemiriye.

# RADYO

Weşînekên heroje bi zimanê kurdî :

**Li Bêrûtê:**

Radyoa Bêrûtê; hero piştî nîro, li saet pênc û sih deqîqan de, li ser pêlên kurt û navîn bi zimanê kurdî nûçeyên Cihanê ên dawîn belav dike. Dirêjahiya pêlan: pêlên kurt 37 mêtir û 34 sentîmêtir, an 8 036 kilo sikil; pêlên navîn 411 mêtir, an 730 kilo sikil.

**Li Bexdayê :**

Hero piştî nîro di saet çaran de, destpê û heta pêncan dom dike. Dirêjahiya pêlan: 42 mêtir û 37 sentîmêtir; pêlên kurt.

**Radyoa Kurdistanê ;**

Li ser pêlên kurt diweşîne; dirêjahiya di wan; 42 û heta 44 û nîv mêtiran; berî nîro li saet 11 û 45 deqîqan de, dest pê dike; û nîv saet, dom dike.

**RadyOa Azirbîcanê ;**

Hero piştî nîro der saet pêncan, li ser pêlên dirêj bi kurdî diweşîne. Pêlên dirêj: 1410 û heta 1415 mêtiran. Ji van pê ve hin radyoyên dinyayê stranên kurdî diweşînin; mîna yên Moskowa, Erîwan Parîs û Londrê.

Sal — 3 Hejmar — 64

Duş. 17 Kanûna Pêşîn 1945

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 35 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 4 lîreyên inglîzî. Bihayê Hejmarekê; 25 Qemerî.

# ROJA NÛ

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc: Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74 04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû

## Neheqî-Nelihevhatin

Ecem li hişyariya kurdan hişyar dibin, jê gazindan dikin, Kurdên Iranê li wan vedigerînin û bersîva wan didin.

Welê dixuye ko di Îranê de, di navbera kurd û eceman de, ji ber pirsa Kurdistanê gelşin hene. Ev gelş ketine stûnên rojnaman jî, herwekî xwendevanên me dizanin piştî ko sondxwarî ketine welatê Îranê kurdên wî welatî jî dest bi xwestina heqên xwe kirine; hin kovar û rojname derêxistina û civatine welatparêziyê danîne.

Bawer bikin ev tişt bi eceman xweş ne hatiye û di rojnaman de, di vê babetê de minaqeşeyin çêbûne û çêdibin. Çendek ji wan rojnaman ketine destên me. Di yeke wan de, di rojnama «Eres» de; 15 Îlon 1945 hejmar 128, roja Înê, bendeke welê heye ko tê de gotinên her du aliyan, kurd û eceman, hatine eşkere kirin.

Eres di vê bendê de nameke civata kurdan «Komel» belav kiriye. Civata kurdan di vê namê de bersiva rajnameyên farisî dide û daxwazên kurdan bi wan dide zanîn.

Komel, navê civata welatparêzên kurd e. Merkeza civatê di Mehabadê, di erdê ecem de ye û li Iraqê malikên wê hene. Hin cerîde navê civatê bi sê herfan sanî didin; «K.K.K» yanî «Komela kominîstên kurd.» Eve benda rojnama Eresê:

### Nexma Istiqlala Kurdistanê A Ne Bixêr

Berî çend rojan di Tehranê de xeberek belav bû. Xebereke welê ko xelkê paxîtextê ê ji her tiştî bêxeber ew hêvî ne dikir Belê Tehrana xafil, Tehrana gunehkar, Tehrana mebhût zanî ko çend serekên kurd, ji lebatên Komelê bê pesaport an rixseteke din e resmî di Tevrîzê re borîne û berê xwe dane Bakoyê.

Piştî midekî dîsan hate zanîn ko yek ji wan kurdan çûye Moskoyê û ên din vegeriyane Kurdistanê. Hizba Komel! Ev nav ji bo xelkê Tehranê tiştekî nû û nûjen bû. Ji lewre xelkê ji hev dipersî, ma ev çi hizb e, armanca wê çiye?

Hin tişt jê hatine zanîn Ji ber ko hin rojnaman da bûn zanîn ko hizba «Komel» hizba daxwazkerên istiqlala Kurdistanê ye. Lê herçî xwendevanên me bi xwe, ji bona wan; pirsa istiqlala Kurdistanê ne tiştekî ewçend nû ye. Ji ber ko me xwendevanên xwe beriya niho jî; li ser vê pirsê serwext kiri bû û di vê babatê de bendin nivîsandi bûn. Em dixwazin wan tiştan, di vê bendê de jî, bi kurtî bînin bîra xwendevanên xwe. Hingê me goti bû: «Heke me ji xwe pirsî, ev nexme, nexma Kurdistanê ji kû û çavan peyda bûye û dest pê kiriye; divêt em guh û çavên xwe bizivirînin paş. Belê divet em vegerin boriya dûr û li paş perdeyên stûr temaşa bikin. Perdeyên ko di beja Ewropayê û di giraveke mezin û nîzingî wê bejê de hatine vegirtin. Ev pirs di pişta wan perdan de hate saz kirin û birêve li cihine din belav bûye».

Lê herçî îro û di vê bendê de, beriya ko em qala Kurdistanê û çêl li wan siyasiyên gunehkar bikin ko bi siyasetên xwe ên xwar pişt didin hizba Komelê; û li sebebên ko dihîlin kurd xwe bavêjin dawa Sovyetistanê, bigerin, em dikin nameke mihim belav bekin.

Di vê namê de ji miletê necîbê Îran re-ko kurd bi xwe birekî wî ye ewçend bi xurtî hatiye dirêj kirin û di heqê wî de tiştine welê bêperde hatine gotin ko em bêgav man hin pirsan jê rakin.

Em dizanin ko xwendina vê namê ji mirovên hesas û îraniyên xêretmend re wê bibe tiştekî dijwar û naguvar. Ji aliyê din dîsan em dizanin ko welatiyên me ên kurd yên ko bi xaka Îranê re bi rabiteyine zexm girêdayî ne û tucaran nikarin wan bendan bibirin; ew jî ji wicûda van bend û hizban wê bêne êşandin û rencandin.

Em hêvîdar in ko bi arîkariya welatiyên xwe em dikarin xwe ji van nexmeyan biparêzin û firehbûna wan bend bikin.

Em îro vê nemaya ko berî çend mehan gihaştiye defterxana me û eslê wê li nik me hatiye hilanîn, belav dikin. Di hejmara tê de, heke hikûmetê mical da me, emê ji perdeke tîz û bilintir bipeyivin.

## Li Cizîrê

### Nûçegihayê me dinivise;

*— Midirê maldariyê yê qezaya Diclê Ebdilhemîd Efendi El-miftî bi destê sê xwînxwaran hatiye kuştin. Cendirme yek ji van girtiye û hêvî heye ko du kesên mayîn ji wexteki nîzing de, dê bêne girtin. Peyayên ko ew kuştine dixwestin pereyên hikûmetê talan bikin. Ebdilhemîd Efendî miroveki hêja û xwedîqîmet bû. Rehmet û piyariya Xwedê lê bit.*

*— Serekê cendirmeyên Sûriyeyê hatiye Cezîrê û çavê xwe li nobetdarî û karkeriyên Cendirmê gerandine.*

*— Karkerên ko bi kuştina hêkên kuliyan mijûl bibin hatine Cezîrê; bila xebata wan berxurdar bibe.*

*— Bi şabûniyeke mezin hatiye bihistin ko Serekcimhûr Şikri Beg Qiwetlî di biharê de, wê bê xwatirxwaziya Cezîrê. Hêviya me eve ko emê careke din bi dîtina wî dilxweş bibin.*

*— Baranine boş bariyane; wilo dixuye ko sala nû dê bibe sala berekelê.*

*— Serekên eşîrên Kîkan û Ezizan çûne Şamê, xatirxwaziya hikûmetê. Riya wan li ser xeyrê be.*

*— Bi himeta mihafizê me ê delal û ciwan Ebdilqadir Beg Midanî, li Cezîrê teşxele ne maye; xelk di gund û zeviyên xwe de bi rahetî û bi selametî dixebitin Mala Mihafizê nû ava û berxurdar be*

## Rojnameyên Tirkî Dinivîsînin

*— Rojnameyeke tirkî Hemşerî qala pirsa Kurdistana Îranê dike û dibêje ko kurdên Îranê arîkariya Ûrisan dikin, da ko erdê Azirbîcanî ji Îranê bête veqetandin û bikeve destê Sovyetistanê.*

*— Ji aliyê din rojnameyên tirkî bi pirsa daxwazên ermeniyan mijûl dibin û dibêjin: heke ermenî ji erdê me perçeyek dixwazin, bila bên û ji xwe re bibin; ev tişt bi dara zorê çêdibe ne bi gotina.*

*— Ev rojname li ser daxwazên Ûrisa dinivîse: Ûris bi tengavên Stenbol û Çenegeleyê û erdên Tirkyayê ên rohelatî zehf bendewar dibin. Ji xwe pirsa Çenegeleyê bûye birîneke xedar. Gelo şerekî mezin î din wê destpê bike?*

*— Li gora gotina wezîrên Îranê ên şerî û dervekariyê, kurd di Kurdistana Îranê de, dikin asê bibin û bi vê armancê qiwetên xwe saz û tertîb dikin.*

*— Rojnama Ingilizî Deylî Telegraf dinivîse: Hawîrên hikûmeta Iraqê ditirsin ko Kurdistana Iraqê de, bi qesda Istiqlalê; ji nû ve teşxeleyine zor dikarin çêbibin.*

## BERSIV

### JI ROJNAMEYÊN IRANÊ ÊN FARISI RE

Komela xortên Kurdistanê; di pêşberê êrîşên kustax û bêşerfiya qelemajotinê û ne naskirina heqên miletê kurd de; bêgav maye sikûtê bişkênîne û heqîqetên ko heta niho ne hatine gotin û zanîn bi ziman bike û wan bêxe ber çavan.

Welê dixuye ko rojnameyên farisî yên ko li Tehranê û di bajarên din de derdikevin xwe danîne xewa kêvroşkan û guh na din vingîniya balafiran û dengê pêlên radyowan. An ew di cihana Ristem û Sehrab de hêwirîne û bi yad û xiyalên şûr û mirtal û gurzan; xwe dilxweş dikin. Û wextê li ber menqela bafûrê rûdinin xiyal dikin ko girava Serendibê û xalîça hezretê Silêman zemt dikin û bi Ristem re siwar dibin û diçin heta ba padişahê

Ev in çend mîsal. Rojnama «Tehranî imrûz» dinivîsîne û dibêje, divêt devê kurdan ji hesin bête tijî kirin û neşriyata wan a bi kurdî divêt bête mehiw kirin.

Yeke din «Nidayî edalet». Ew jî dibêje ko xwendin û nivîsandina kurdî divêt bête bend kirin. Yekî bi navê Ensarî van tiştan, yên ko xweserî mirovên nesax in û ji hezeyanê pêve ne tu tişt in, dinivîsîne û dibêje, bila zemanê çar dîwarên Daryûş bînin bîrê. Iftixar bi îranîtiyê ye; ne bi kurdîtiyê ye. An fikra istiqlalê, wek nesaxiya taonê ji Iraqê şi rayetî wan kiriye.

Wextê ko Ensarî qala çar dîwerên Daryûş dike, bê şik dikeve xewneke şairane û bi neşweya heşîşê mest, ezman û bihuştê di qelemerewê xwe de dibîne, dîwarê Çînê û xendeka Babilê mihasere dike û zora wan kelehan dibe. An Xişayar şah e; û ew çend hespên wî hene ko ava behra Mermerê têra avxwarina wan nake û wextê welê dibîne; berê xwe dide behrê û bi xezeb jê re dibêje: «Xwelîserê ezê te edeb kim».

Ma ne heyf e ko di welatên rohelatê navîn û di vî zemanî de; di sedsala bîstan de miletek bi sehwîrên cin û dêwan bijit û sedsala zêrîn xweserî Riza Şahê mezin bizanit.

Ma gelo ev mirovên ha leşkerên hevalbendan û nûçeyên radyo û têlsîzan jî gotinên cin û periyan dihesibînin. Belê, ev mirovên ha yên ko hawîrdora xwe jê bêtir bîr na bin, ji dil reben û bêçare ne. Wextekî rojnameke frensizî karîkatûrek çêkiri bû û tê de wesfê timakariya Şah Rizayê Mezin dida. Qerar dan ko qutbiriya xwe ji Fransê bikin.

Lê divêt ew bizanin ko ji mefaxirên Îranê, yên ko bi piranî mefaxirên kurdan in û ew wan yên xwe dihesibînin, pêre, entikxaneyên Ewrope û Emerîkê bi eserên kurdan ên hevnare tijî ne û ew îsbat dikin ko kurd xwediyê medeniyeteke kevn in.

Ensarî dibêjit ko ji kurdan re divêt bi îraniyetê iftixar bikin. Heke ev gotin ne hezeyan e, ma çi ye? Em ferz bikin sê mîlyon û nîv kurd yên ko di Îranê de dijîn bila pê iftixar bikin. Lê heft mîlyonên din yên ko di Tirkiye, Rûsye, Iraq û Sûriyê de ne ma ew jî digel xelkên wan welatan ên din bi îraniyetê iftixar bikin.

Divêt hon qenc bizanin ko ji niho û pê de; wê nema bête destûr dayîn ko xwîna xortên kurdan di riya mexsedên we ên pîs de bête rijandin. Belê kurdan çavên xwe bi rûpelên tarixê gerandine û zanîne, herçî fedekariyên ko di qadên Sind û Pencab û di deştên nav bera çeman de kirine; ew bi tenê xweşî û mesleheta dijminên kurdan re bûn.

Êdî kurd dizanin ko dihatin xapandin û xizmeta dijminên xwe dikirin. Siltanên sefewî, xelîfeyên Osmanî û melikin din ji şerûdiya kurdan fêde digirtin û kurdan ji wan re dinya vedigirt. Lê ev tişt nema têne pê.

Kurd êdî hişyar bûne. Hereketên ko ji sed û sih salî û hir ve çêbûne, wek hereketên Şêx Îbêdilah, Şêx Ebû-Seîd, Şêx Ihsan Nûrî û selteneta şêx Mahmûd ev hemî ji sefheyên cidalên istiqlala Kurdistanê ne.

*Van cidal û hereketan ji dinya-alemê re kemala kurdan a siyasî dane zanîn. Ji lewre divêt hon ji bizanin ko cenga mileteki xudan deh mîlyon nifûs; nikare bê netice bimîne.*

*Heke hon hêj nizanin, kurd ji istiqlala xwe re çawan dixebitin, rojnameyên biyanî wek: Ehram, Ehrar, Itihad, Bêrût, Telegraf, û rojnameyên kurdî wek: Roja Nû, Ronahî, Stêr, Riya Teze, Jîn, Gelawêj, Dengî Kilîyî Taze, Niştiman Çiya, Trûske Yekîtiya û Têgûşînê bixwînin û serwext bibin.*

*Miletê kurd yê ko ji bo xatirê Nadir Dehli û ji bo xatirê şahên sefewî ji we re riyên Qezwîn û Tevrîzê mihafeze dikir û li şûna mikafatê dihate nefî kirin Bicnûrd, Bender-Ebas û deverine Efxanistanê, nema ji we re dibit alet.*

*Miletê ko gelek serdarên şahan vegerandine heta deriyên Tehranê, heft salan Bexda ji destên imperatorên osmanî derêxistine, êrîşa xwe heta bi Isfehanê kirine û ji bo parastina şerefa belgihên eskerî yên ko wergirti bûn, di deştên Iraq û Lîbyayê û çiyayên Birxaristan û Sirbistanê û di asêgehên Kurdistan û Azêrbêcanê, de heta dilopa xwîna xwe a paşîn rijandiye; êdî nikare li kuştara xwe a dilxiraş laqeyd temaşa bike.*

*Lê giyanê wan mirovan abadin e, ew na mire; û wijdana milet û dewletên mezin nema razî dibe ko ev neheqî dom bikit.*

*Belê ne medeniyet, ne ji insaniyeta îro nikare destûr bide ko ev terzên qirûnwistayî dom bikin û bi navê hevnijadiyê hon di talankeriya xwe de pêş de herin. Ji milê din, bi hin tiştên ko hon ji biyaniyan hînî wan dibin, li me dehwa serdestiyê dikin û xwe di nav me de zimreke bijarte dihesibînin. Ma hon çawan vê dozê li me dikin. Ma hon nizanin ko êdî di xwîna we de tu pakî ne maye. Xwîna we îro xelîteyek e; yewnan, ereb, mongol, tev de di ser we re derbas bûne.*

*Lê herçî kurd, em dikarin vê dozê bikin. Ji ber ko kurdan bi dilawerî û bi asêbûna cihên xwe xwîna xwe pak hilanîne. Digel vê hindê û bi vi halê xwe hon dixwazin vî miletê sitemdîde bêxin teqana feqr û belengaziyê û di nav çar dîwarên Dergûş de bidin jiyandin.*

*Wextê hon pirsa istiqlala Kurdistanê, istiqlala miletekî xwey deh mîlyon nifûs yê ko li ser erdekî nizingî 500.000 kîlomêtir çarçik rûniştî, seh dikin lê ecêbmayî dimînin. Ma hon nizanin ko miletekî ne ewçend mezin, lê miletekî xwey 3000 nifûsî jî, wek Monakoyê, misteqil e.*

*Werin dev ji van xeyalatan berdin; rastiyê bibînin û ji niho de navbeyna xwe bi kurdan re çêkin da ko sibe bikarin bi minasebetine ticarî û iqtisadî ji erdê wan ê zêrxêr berxurdar bibin*

*Lê heke we di nezaniya xwe de pê da erdê bizanin ko di roja hisab û kitabê de poşmanî bê fêde ye.*

**KOMELA XORTÊN KURDISTANÊ**

# Tefsîra Quranê

34 - Qabil termê birayê xwe hilgirti bû pişta xwe û bê hiş digeriya, wê çaxê bi emrê Xuda du qijik hatin pêşberê wî û bi hev re dest bi şerî kirin, gava yekî ji wan hate kuştin, qijikê din bi nikil û peçikê xwe erd koland û qijkê mirî tê de veşart.

Qabil gava ev dît, dilê wî şewitî, hêstirên wî xwîndibûn û ji çavên wî direjihan û wî digot: xwelî li serê min be, hinga qijikekî jî ne bûm; ta ko birayê xwe veşêrim û cinayeta xwe binepînim. Qabil poşman bû, kezeba wî şewitî.

35 - Ji ber vê yekê, me ji lawên Israil re emir daye, ta ko ew bizanin: yê ko mirovekî bê sebeb dikuje, mîna kesekî ye ko hemî mirovên dinê kuştiye û yê ko arîkariya peyayekî bêsûç dike û wî, bi arîkariya xwe ji mirinê difilitîne; divê bizane ko ew mîna kesekî ye ko hemî mirovên dinê sax kiriye. Li gora emrê vê ayetê tên kuştin, yên ko mirovekî din kuştine an di welatî de fesadî kirine, weke girtina riya xelkê, talankirina wan û bêbextiya milet û welêt.

36 - Yên ko neyartiya Xuda û pêxember dikin û riya xelkê digirin, wan dikujin û talanê wan tînin, ew fesadker in û cezayê wan weke hikmên jêrîn e:

Heke wan mirovin kuştin ew jî têne kuştin, heke wan hem mirovin kuştin û hem jî talanên wan anîn; divê ew berî bêne kuştin û piştre bi dar ve kirin, heke wan talanê xelkê anîn lê kesek ne kuştin, divê destê wan ê rast û piyê wan ê çepê wê bêne jê kirin; lê heke sûçê wan bi tenê tirsandina xelkê bû, divê bêne nefî kirin. Ev cezayên hanî, ji wan re kêmasî û perîşaniyeke giran e; û ji bona wan di axiretê de ezabekî mezin heye.

37 - Lê yên ko beriya ko bikevin destê we tobedar dibin, divê hon bizanin ko Xuda di gunehên evdên xwe dibore, Xuda piyar û dilnerm e.

38 - Gelî bawermendino... ji Xudayê xwe tirsiyar bibin û bi her awayî; tiştên ko Xuda ji pêkanîna wan hez dike; li hev bînin, tu cara dest ji gotina rastiyê û kirina qenciyê bermedin, di riya Xwedê da bixebitin; ta ko hon bigehin xelasê.

39 - Heke yên ko kafir bûne; xwediyê malê dinyayê bibana û wî malî bedêla xelasê xwe; ji êşa roja piştdawiyê bikirana, ew ji wan ne dihate qebûl kirin; ji bona wan ezabekî dijwar heye.

40 - Ew dixwazin ji agirê dojehê derkevin lê kesekî nîne ko dikare wan jê derîne. Wan reyeke giran dane ber xwe, ezabê rûniştina wan di dojehê de, wê dom bike

41 - Jin be an mêr be, destê her kesê ko diziyê dike jê kin, ev ewda kirina wî ye û bi emrê Xuda ji mirovên din re ibretek e. Xuda fêris û xudanqudret e.

Destê mirovekî ko ji birçîtiyê tiştekî kêm didize na yê jê kirin

42 - Yê ko gunehkar û ezabdarê nefsa xwe dibe lê hema bi tobê; xwe qenc dike, bila bizane; Xuda ji tobedaran re tobe dide, di gunehên xelkê dibore, Xuda efiwkar û piyar e.

43 - Gelî mirovino... ma hon nizanin ko Xuda xudanê milkê erd û ezmanan e, ew her kesê ko dixwaze diezibîne û her kesê ko dixwaze digihîne efiwa xwe, Xuda bi her tiştî dikare.

44 - Pêxemberê min... xema mirovan yên ko firset kete dest, kufr û bêdîniya xwe aşikare dikin, me xwe, ew bi tenê bi ziman, lê ne ji dil baweriya xwe tînin; û ji cuhiyan qewmek heye ko tên guhdariya te dikin û piştre tiştên ko te ne gotiye dikin stoyê te û wan gotina di nav xelkê de belav dikin û derewan dikin û ji aliyê din diçin li ba cuhiyên Xîberê jî ko ne hatine cem te û ji wan re; ji devê te tiştine dibêjin ko te qet ne gotiye û pê derewan dikin.

Cuhî, geh û gotinên kitêba xwe diguhêrin û ji mirovên xwe re dibêjin: herin ji Mihdmed bipirsin, heke qerara wî li gora xwestina me ye, wê qerarê qebûl bikin, heke no pê qail ne bin. Gava Xuda ezibandina mirovekî dixwaze; tu li ber Xwedê ni karî jê re rêkê peyda bikî; bizane ko Xuda na xwaze dilê hin mirovan ji gunehan paqij bike, û ji wan re di dinyayê de kêmasî û perîşanî û di axiretê de rûreşî û ezabekî dijwar dide.

45 - Qesda ew e ko dikin gotina te bibihîsin, mana wê biguhêrin û pê derewan bikin û ew hakimên cuhiyan rişwetê dixwin; bê namûs û şeref in, bêbext in. Gava ew tên dixwazin ko tu di nav bira wan de hikim bikî; tu bi qîma xwe yî; heke dil dikî bike heke no, dev ji wan berde; ko te dev ji wan berda tu zererê wan na gihe te. Lê heger, tu di nav wan de hikim dikî, hikmê xwe li gora edaletê bide, Xuda ji mirovên adil hez dike.

46 - Ma çawan ew tên û li ser dehwayên xwe hikmê te dixwazin, Tewrat li cem wan e û hikmên Xuda di wê de ne. Ma ne were ye? Ko te hikmê xwe da, ma ewê dev ji hikmên Tewratê berdin, wan baweriya xwe bi kitêba xwe ne anîne.

47 - Me Tewrat da dahatin, roniya wê riya baweriyê û hikmên di wê riya edaletê şanî xelkê dide.

Pêxemberên Xuda ên misilman li gora wê, hikmê xwe dan û didin û yên ko ketine riya pêxemberên xwe jî, weke cuhî, xaxam û zanayên di wan, û yên ko Xuda ji wan re parastina hikmên Kitêba xwe sipartî bû û dîdevaniyê Kitêba Xuda dikirin, hikmê xwe li gora Tewratê didin. Ne ji xelkê, lê ji min bitirsin û ji bo standina rişwetê, û gihaştina mezinahiya dinyayê, dev ji ayetên min a rast bermedin. Yên ko ne li gora emrê ayetên Xuda hikim dikin, ji kafira ne.

48 - Û di Tewratê de, me ji bo wan nivîsandi bû ko: nefs bi nefsekê, çav bi çavekî, por bi porekê, guh bi guhekî, diran bi diranekî têne qisas kirin û ji birînekê jî li gora imkan û edaletê qisasek heye. Yê ko di heqê qisasê dibore ew jê re dibe kefaret, yên ko hikmê xwe ne li gora Kitêba Xuda didin; ew zalim in.

49 - Me Îsa kurê Meryemê kir ser şopa pêxemberan û me Îsa kir tesdîqdarê Tewratê û me jê re Incîl da, kitêba ko ronahiya riya rastiyê pêş wan dike.

Incîl li mirovên ko ji Xudayê xwe tirsiyar in şîretan dide û riya rastiyê pêş wan dike.

50 - Divê File, di nav hev de li gora Incîlê hikim bikin, yê ko hikmê xwe li gora kitêba ko jê re Xuda da dahatin na de, ew ji fasiqan dibe.

51 - Me ji te re Quran şand ya ko her kesî re şanî rastiyê dide û hikmên kitêbên ko beriya wê hatine dahatin tesdîq dike û hikmên wan diparêze. Gava xudankitêb tên û li ser dehwayên xwe hikmê te dixwazin li gora emrê Xuda ê hatiye dahatin qerara xwe bide û guh me de daxwaza wan, divê tu hikmê xwe li gora emrê Xuda ko ji te re dahatiye bidî.

Gelî mirovino.. me ji we ji her yekî re, ji cuhî, file û misolmanan re şerîet û rêyek da nîşan kirin, heke Xuda bixwesta me hon hemî li ser dînekî bicivanda, lê wî wisa ne xwest û ji we re çend dîn da, ta ko pê mirovên çak û dilrast ji ên ne baş û dilxwar veqetin. Dest bi hev anîna qenciyê bikin û bizanin ko honê vegerin ba Xwedê û bikevin hafa wî û ew ser tiştên ko we bi hev ne dikir hikmê xwe wê bide.

52 - Pêxemberê min.. di dehwayên xudankitêban de qerara xwe li gora Quranê bide û dev ji daxwazên wan berde, çavê xwe veke, bala xwe bide, ew dixwazin ko tu ji hikmên Quranê dûr bikevî; heke ew bi hikmên Quranê qail na bin, bizane ko Xuda seba hin gunehên wan dixwaze ceza û perîşaniya wan bilezîne, bêtirê cuhiyan di kufrê de pê didin erdê.

53 - Gava ew minêkarê qerarekê li gora hikmên dema nezaniyê a berî islamiyetê ne, bizane ko ew di riyakariyê de ne û ji te re bi dev xweş dikin. Ma di hikm û qerardanê de ji bo miletekî dilpak û bawermend; ji Xuda çêtir hakim kî heye?

54 - Gelî bawermendino... bi cuhî û filan baweriya xwe mey nin û wan ji xwe re me kin heval, ew bes hevalên hev û du ne û yên ji we ko hevalîtiya wan dikin, bizanin ko ew jî ji wan in. Xuda miletên zalim na gihîne riya rastiyê.

55 - Tu dibînî... mirovên ko di dilê wan de şik û nifaq heye zû dibin hevalê wan û dibêjin; em ditirsin heye ko dinya biguhêre û hikim bikeve destê wan; lê ne wisa ye; heye ko Xuda ji ser kafiran, ji pêxemberê xwe re nisretê dide. Mekê hate zeft kirin û cuhî hatine kuştin û yên ko nîzikî cuhiyan dibûn û bi wan re midara dikirin; poşman û riswa bûn.

56 - Gava nifaqê minafiqan aşikare dibe, mirovên bawermend zendemayî dimînin û ji hev û du re dibêjin: ma ew ne bûn ko bi dilekî reş sund dixwar û digot em bi we re ne. Tiştên qenc ko wan minkfiqan pêk anîne pûç dibe û ew bi ezabekî giran têne êşandin.

57 - Gelî bawermendino... yên ji we; ko piştî mirina Bezma Mihemed; ji dînê xwe vedigerin, divê bizanin ko Xuda wê gavê miletekî radike (dide rabûn) ko ew ji Xudayê xwe û Xuda jî jê hez dike. Ew milet bi misilmanan re nefispiçûk û bi kafiran re nefismezin û şedîd dibin û di riya Xuda de cihadê dikin û ji lom û gazinda gazindkeran na tirsin, ew hasiyetên he, ji kerema Xwedê ji wan re hate dayîn, Xuda her kesê ko dixwaze digihîne kerema xwe. Zanîna Xwedê fireh e, dora her tiştî digire.

58 - Sermiyanê we Xuda, rêberê we Pêxember û hevalên di we mirovên bawermend in, yên ko nimêja xwe dikin, zekatê didin û gava xwe ji Xudayê xwe re ditewînin jî, dest ji kirina qenciyê bernadin.

59 - Yên ko ji xwe re Xuda, pêxember û mirovên bawermend dikin heval, ew ji peyayên Xuda ne û peyayên Xuda her serdest in.

60 - Gelî bawermendino... mirovên xudankitêb û dîn-nezanan û yên ko tewz û henekê xwe bi dînê we dikin ji xwe re me kin heval û heke hon bawermend in ji Xudayê xwe tirsiyar bibin.

61 - Gava ezan tê xwendin ew pê tewz û henekan dikin ji ber ko ew bê hiş in, seh na kin.

62 - Bêje, gelî xudankitêbino., ma xeyda we, ne ji ber vê yekê ye ko me baweriya xwe bi Xuda û bi kitêba ko ji me re û bi kitêbên ko beriya me dahatine aniye û em dizanin ko piraniya we fasiq in û em bi kufrê qail ne bûne.

63 - Bêje: ezê ji we re komê mirovên ko gihane cezayê Xuda bidim zanîn; ew ji qewmê cuhiyan her kes e ko ketiye laneta Xuda û Xuda jê eniriye, hinên ji wan meymûn û hinên din jî beraz bûne û yên ko ibadeta Taxût kirine, ew hemî gihane xirabiyê û ji riya rastiyê yekcar dûr ketine.

64 - Gava ew tên nik we dibêjin: me baweriya xwe aniye, lê rastî ev e: ew kafir tên hafa we û ji ba we kafir diçin, tiştên ko ew dilê xwe de vedişêrin Xuda pê dizane.

65 - Û tu dibînî ko piraniya wan di kirina guneh û neçeyiyê û di standina rişwet û xwarina faizê de serî ji hev û du distînin; emelê wan çiqas kirêt û bêkêr e.

66 - Çima zana û xaxamên wan destê wan mirovan ji kirina neçeyiyê û xwarina rişwet û faizê bi şûnda na kişînin. Ji kirina wan gunehan re guhnedana zana û xaxamên wan çiqas kirêt û şerm e.

67 - Cuhiyan got: Xuda destgirtî ye. Destgirtî û çavteng cuhî bi xwe ne û Xuda lanet li wan kir. Xuda comerd û keremkar e, destvekiriye, li gora daxwaza xwe nîmeta xwe dide; serhişkî û kufrê wan bi bihistina Qurana ko Xuda ji te re da dahatin hêj bêtir dibe; me xeyd û dijminîtiyê heta roja dawiyê xist nav beyna wan; û her cara ko ew agirê şerî dadidin, Xuda wî vedimirîne û zora wan dibe. Ew her û her dest li fesadiyê dikin; lê Xuda ji fesadkeran hez na ke.

68 - Heke xudankitêban, baweriya xwe bi Xuda bi Quran û bi pêxember bianiyana û ew ji Xudayê xwe tirsiyar bibuwana, me di gunehên wan diborî û me ew digihand buhuştên têr nîmet.

69 - Heke xudankitêban baweriya xwe bi Tewrat, Incîl û Quranê û bi kitêbên Xuda ên din bianiyana, rizqê wan boş dibû û wan ji fêkiyên daran û ji zadên zeviyan dixwarin. Hinên ji wan aqil û adil in, lê piraniya wan tiştên kirêt dikin.

70 Pêxemberê min... hikmên Qurana ko ji te re hate dahatin ji her kesî re bê tirs û perwa bide zanîn; ko te wisa ne kir bizane ko te wezîfa pêxemberîtiya xwe pêk ne aniye; Xuda te ji tadayê xelkê diparêze; Xuda qewmê kafiran na gihîne riya rastiyê.

71 - Bêje: heta ko we baweriya xwe bi Tewrat, Incîl û Quranê û bi kitêbên Xwedê ên din ne aniye û hon li gora emrê wan ne meşiyane, bizanin ko tu hîm û binyada we nîne. Ew ji Qurana ko ji te re da dahatin û ji pêxemberîtiya te dihesidin û pê hêj bêtir gunehkar dibin û kitêba Xwedê inkar dikin. Xema qewmê kafiran me xwe.

72 - Yên ko baweriya xwe anîne û cuhî file an sabiî bûne û her kesê ko baweriya xwe bi Xuda û bi roja piştdawiyê aniye û qencî kiriye, ji bona wan tirs nî ne û ew xemdar na bin.

ne qediyaye

# Feqîr Elî

—3—

Hevalên di wî, bi aqilên wî keniyan û ji xwe re gotin dihin bûye.

Feqîr li şevê di bîrê de li cem pîrê ma, pîrê deriyê Odekê jê re vekir, text têde hene, xwarin jê re anî, wê şevê dilxweş bûn, sibehê, pîrê jê re got: Here, avê ji wan re bikşîne, berî ko tu derkevî, were cem min, pişt re here.

Feqîr çû, av ji wan re dagirtin, piştî ko heywanên di xwe av dan, firaxên xwe teje av kirin û jê re gotin: ya Feqîr were derkeve!

Feqîr got: laşê min ne paqij e, ezê xwe bişom pişt re, çû cem pîrê, xatir ko jê bixwaze, nêrî, pîrê jê re heft kevirên cewahir dan û jê re got: heke tu ji Bexdayê vegerî, heft lib xurme ji mi re bîne bi xwe re; go: ser çavê min.

Feqîr hat, şerîd bi xwe ve girêda, hevalê wîna ew kişandin, gava derket ser bîrê, go: kanî sed mecîdiyên min; dane yê, ji axê xwe re got: kîsekî bide min, kîs dayê, ew sed mecîdiyên xwe xiste kîs, heft kevirê cewahir xiste cem wan û devê kîs dirût, belê ew nizane ko ev kevir cewher in; nas na ke.

Ji axê xwe re got: mi divê tu, vî kîsê min, bişînî ji xweha min re, bi vî kerwanî ko ji Bexdê hatiye, û kiriye here Helebê. Axeyê wîna ew kîs bir, teslîmî wî kerwanî kir, honê vî emanetî bi xwe re bibin Helebê, bidin Hecî Ebdela, ji xweha Feqîr Elî re ye.

Emanetê wîna bi xwe rê birin bajarê Helebê, yekî ji xulamên xwedîkerwanan ew emanet anî cem Hecî Ebdela, dan xweha wî.

Keçikê kîs vekir û lê nerî, kêfa wê pir hat, nerî ko heft kevirê cewahir tê de ne; kare pê bajarê Helebê bikire. Yek ji wan keviran, anî cem Hecî Ebdela go: ez dixwazim tu vî kevirî ji mi re bifiroşî...

Hecî Ebdela ew kevirê wê bir li sûkê gerand, kesik nikare bi kire. Çar tacir bûn şirîkên di hev ew kevir kirîn. Keçikê her heft kevirê xwe bi vî hawayî firotin. Keçik zana ye; di mek tebê de rabûye, resmik qesrê ji xwe re girt, weka bavê xwe, ji Hecî Ebdela re got: ez dixwazim qesrekê wek wê, tu ji mi re ava bikî.

Hecî Ebdela, erd jê re kirî, û di mehkê de qesrek wek a bavê wê, jê re ave kir. Piştî ko timam kirin, necar anîn, kursî yên di meclisê tê de çêkirin, ber kursîkê navê xwediyê wê li ser danîn.

Hindurê qesrê raxistin ji tejberan û ji mehfûran, tu ferq di nav beyna wê û di ya bavê wê da ne ma.

Keçikê got: ya hecî Ebdela, tiştek kêm ne maye, belê ez dixwazim di qulixa li ber devê derî çêkim; ji bona ko esker têde nobetê bikşînin.

Jê re du qulix çêkirin, deh nefer esker, danîn di wan qulixa de, şev û ro nobetê dikişînin. Miaşê wan li ser keçikê ye.

Keçikê derî li xwe girt, ji esker re got: emrî tu kesî tune bê cem min. (Her sibe Hecî Ebdela wê bê ber deriyê wê û ban dikiyê; heger tiştek jê re lazim be, jê re, ji sûkê tîne, dixist selikê û bi şerîtê dikişîne cem xwe.

Ew di vî halî de ne, emê herin ser Feqîr Elî.

Gihan bajarê Bexdayê, malê di xwe firotin, karê di xwe kirin, ko vegerin Helebê.

Barê di xwe bar kirin, gihan bajêr, Feqîr Elî hate bîra wî, ko çawan pîrê tembiya xurma li min kiri bû, mîn jê re ne bir pere bi min re tune, lazim ezê pars bikim. Ji dû kerwanê xwe vegeriya, hate çarçiyê, bi rêza dikana ket, her dikankê du lib, û sê lib danê, ritilek pê re çêbû; hat gihaşte kerwanê xwe û meşiya.

Xurmê di xwe xistin kîsekî, û bi milê xwe ve daliqand; amin na be, ko deyne ser heywana, dibê, wê hevalên min bixwin.

Gihane ser wê bîrê car din. Car dî her sê kerwan, gihane ser hev, delêlî ban kir, kî wê dakeve bîrê, bi pêncî mecîdî; Feqîr Elî go; ez!

Şerît pê ve girêdan, û jê re gotin: tu xurme bi xwe re bibî kû! go: ez amin na bim, li cem we bihêlim, honê bixwin.

Daket binê bîrê, av ji wan re kişand û got: ezê îşev di binê bîrê de razim.

Çû cem pîrê, ew xurme danê, wê şevê li cem pîrê ma; sibehê rabû, pîrê qutek dayê, û cuzanek dayê, jê re got: heke tu sura wan derxînî, ezê te bikim ax; heke ji te pirsîn, bêje: mi dîtin, li çolekê...

Feqîr dîsa av ji wan re kişand û ew jî derket, sed mecîdiyên din jî, ji wan standin, û meşiyan.

Roja ko gihan Helebê, sala wî qediya, ji axê xwe re got: miaşê min bide min, ezê herim mala xwe.

Axê wî go: ser çava, meaşê mayî dayê. Feqîr çû mala Hecîyê Ebdela. Hecî Ebdela Feqîr dî, kêfa wî pê re hat û jê re got: bimeş, ezê mala te pêş te bikim. Feqîr ma'dê wî xera bû, ji xwe re got: weh, xweha min zewicandine, bi du Hecî de meşiya, heta gihaştin ba qesrê; ban kir xweha wîna, jê re got: va Feqîr Elî hatiye.

Xweha wîna di şibaqê de nerî, kêfa wî pir hat, daket derî vekir, go: De were Feqîr Elî, de were mala xwe.

Feqîr Elî ne wêre here hinduro; yeqîn na ke ko ev mala wî ye. Keçikê bi destê wî girt, banî xist jor, û jê re got: ev qesir bi wan kevirên ko te şandi bû me çêkiriye, dilê wî rahet bû.

Wê derê Feqîr Elî qutî û cuzdan dan xweha xwe, keçikê lê nerî, cuzdan vekir, nerî ko tije zêr e, her ko digire û vedike tije zêr dibe. Qutî vekir, şewqa xwe da hindurê qesrê temam, go: hay... îro dana Xwedê mezin e. Sibehê emir dan bajarê Helebê, miaşê biçûk û mezinan timam li ser me.

Di wî hawayî de, xeber çû Stenbolê cem Siltan, jê re gotin yek li helebê heye, jê re dibêjin Elî beg, miaşê biçûk û mezinên Helebê dide.

Siltan ji wezîrê xwe re got: lazim em herin tecrîbiya wîna bikin. Kuncîlê feqîra li xwe kirin û berê xwe dane bajarê Helebê.

Nêzîkî bajarê Helebê bûn. keçka Siltan remildar e. Di remla xwe de dî ko bavê wê û wezîrê xwe, sibe bigehîne Helebê. Ji

PÊJINÊN DINYAYÊ



Mirovên pêşveketî, miletên bervehatî ji xwe re bajar û şaristanine çeleng û spehî, fireh û dilruba ava dikin, riyên van bajaran esfeltkirî ne; di van şaristanan de, xwendegah û zanisteyine mezin hene; bajarên wilo bi xestexane, bi ibadetgeh in; têde hotelên qenc, xwarinxaneyên baş hene; dora şaristanan têr destgeh û febrîqa ne; eve şaristanekî wilo.

Feqîr Elî re got: sibe tuê herî devê riya ko jê dê bên.

Gava tn wana bibînî, libsê feqîra li wana ye, ji wan re bêje: kerem kin, wana bîne mal.

Sibehê Feqîr Elî çû devê riya ko jê de bên, carekî nerî, ko du feqîr ji wê ve tên. Feqîr Elî qedimî, destê her diwa maçî kir û go: keremkin ya feqîrên delal, emê herin mala mel.. Adeta we latê me wilo ye. Siltan û wezîrêxwe pê re meşiyan, nêzîkî qesrê bûn, Siltan li wezîrê xwe fitilî, û jê re got: mi ji te re go, emê herin Helebê, te em vegerandin Stenbolê car din; ev qesra min e. Wezîr jê re got: ya Siltanê min, ev der Heleb e, ne Stenbol e, gava bi derenca ve banî ketin, dinere ko tejber û mehfûr wek ê wîna ne; banî ketin jor, li ser kursiyên miclisê rûniştin, li pişt nerî, ko navê wî li ser kursiyê ye; go: ya wezîr, ma mi ji te re ne go ev der Stenbol e ?

Wezîr go: ev der Heleb e, ne Stenbol e. Elî beg çû cem keçkê, jê re got: va.. me anî ne.

Keçikê jê re got: ezê herim cem wan, kuncîlê xwe ê minasib li xwe kirin, du fincan qehwe, danîn ser sînîk zêr ûçû cem wana.

Gava Siltan keçka xwe dî, nas kir, serê xwe xist ber xwe.

Keçikê ban kiriyê, go: serê xwe rake, nayê bîra te roja ko te ez tazî bi Feqîr Elî re şandim; te dî çawan Xwedê ê ko ji te cámêrtir e; da me, roja ko mi, ji te re digot: ji te camêrtir heye, tu dixeyidî; li wê derê Siltan, destê keçika xwe maçî kir û got: xeber a te ye!

Keçikê jê re got: heyanî niha ez û Feqîr Elî xweh û birayê hev in û me diva bû ko tu bê vê derê, ji bona mehra min.

Qadî û miftî anîn, mehra wana li hev du birîn û ewgihan miradê xwe, keçikê ji Feqîr Elî re got: lazim em xelatê wan bidine wan, cuzdan dan Siltan, û qutî dane wezîr. Siltan pir dilxweş bû ji wan, û ji Elî beg re got: bajarê Helebê di bin hikmê te de mal tu xera bikî, tu ava bikî, tu zanî...

Hew çîroka me xelas bû serê xwendekaran xweş be.

**Silêman Hesen Mercê**

## Kitêbên Dawîn

### Yên ko qala pirsa Kurdistanê dikin

*Di vê dawiyê de, li ser pirsa Kurdistanê, sê kitêb hatine çap kirin, û her sê ji bi zimanê erebî hatine nivîsandin, û li Bêrûtê ketine firotinê.*

*Navê van kitêban û nivîsevanên di van :*

*— El - Ekrad - fî - Libnan û Sûriye. Bi qelema Dr. Edîb Mihewed. Bihayê wê sed qirûşên libnanî.*

*— Kurdistan - ew - Bilad - el - Ekrad. Bi qelema Seyda Yûsif Malik, xwediyê rojnameya Esra. Bêrût; Sendûq - el - Berîd: 857. Bihayê wê sed qirûşên libnanî.*

*— El - Qediyet - el - Kurdiye; beyin - el - ems - we - l - yewim. Bi qelema Dr. Mihewed. Bihayê wê sed qirûşên libnanî. Adrêsa Dr. Mihewed: Milik Debis; Terîq - Ebdil - basit - el - Faxûrî; Bêrût; Libnan.*

# MIRÊKA CIHANÊ



*Rêhesinên Ewripayê di vî şerî de, xesarine zehf mezin dîtine; bi hezaran kilomêtir rêhesin bi bombeyên balafiran û bi dînamîtê hatine xira kirin; îro ko şer qediyaye û rahetî vedigere Cihanê dewletan dest bi selihandina rêhesinên xwe kirine; wêneya jorîn xebateke wilo pêş me dike.*



*Ji avahiyên erdê Ewripayê: Ibadetgehek.*



*Gasingeha Stêrê, û Kevana Serfiraziyê.*



*Şam bajarekî zehf şîrîn e; em kurı dibêjin Şam şekir e, û bitenê welat jê şîrîntir e; ji bergehên Şamê, ên delal camiyek.*

## Cigareyên Tamdar

Cigareyên çêtir û tamdar, yên Rejiya Libnan û Sûriyeyê ne, Jokey-Klub, Yekemîn, Befra. Tatli-Sert, Vircinya, Oriyen, Zodiyak; ev cigareyên he hemî, ji titinên çêtir û paktir têne çêkirin. Piştî xwarinê cigareke baş, dilê cigarevxwaran vedike.

Gava dixwazin cigarekê vexwin, navên Jokey-Klub, Yekemîn-Birincî, Befra, Tatli-Sert, Vircinya, Oriyen, Zodiyak bînin bîra xwe û yek ji wan paketan, ji xwe re bibijêrin.

## ÇAPA KURDI

*Niho bi zimanê kurdî hevde kovar û rojname derdikevin. Ji van pê ve, li Bêrûtê, her panzde roj carekê, bi zimanê frensizî rojnameyek derdikeve; navê wê « Le jour Nouveau » ye; çar rûpelên di wê ên mezin hene. Ev rojname qala çand û nivîsar û siyaseta Kurdistanê dike û doz û dehwa miletê Kurd, têxe pêşçavên cihanê. Ev in navên kovar û rojnameyan û welatên ko lê de têne çap kirin. Li Sovyetistanê: Riya Taze, Kovara Qefqasê.*

*Li Iranê: Peyam; Niştiman, Kûhistan, Zegros. Çiya, Tirûske, Yekîtiya Têgûşîn*

*Li Iraqê: Azadî, Jiyan, Gelawêj, Dengî - Kîtiyî - Taze.*

*Li Şamê: Hawar, Ronahî.*

*Li Bêrûtê: Stêr; Rojû Nû.*

## RADYO

Weşînekên heroje bi zimanê kurdî:

**Li Bêrûtê:**

Radyoa Bêrûtê; hero piştî nîro, li saet pênc û sih deqîqan de, li ser pêlên kurt û navîn bi zimanê kurdî nûçeyên Cihanê ên dawîn belav dike. Dirêjahiya pêlan: pêlên kurt 37 mêtir û 34 sentîmêtir, an 8.036 kilo sikil; pêlên navîn 411 mêtir, an 730 kilo sikil.

**Li Bexdayê:**

Hero piştî nîro di saet çaran de, destpê û heta pêncan dom dike. Dirêjahiya pêlan: 42 mêtir û 37 sentîmêtir; pêlên kurt.

**Radyoa Kurdistanê:**

Li ser pêlên kurt diweşîne; dirêjahiya di wan; 42 û heta 44 û nîv mêtiran; berî nîro li saet 11 û 45 deqîqan de, dest pê dike; û nîv saet, dom dike.

**Radyoa Azirbîcanê:**

Hero piştî nîro der saet pêncan, li ser pêlên dirêj bi kurdî diweşîne. Pêlên dirêj: 1410 û heta 1415 mêtiran. Ji van pê ve hin radyoyên dinyayê stranên kurdî diweşînin; mîna yên Moskowa, Erîwan Paris û Londrê.

**Strana Kurdî:**

## Heftsedê

Lê warê....

Erê Heftsedê, dotmama Genc Xelîl Axa ji xewka şîrîn hişyar bûye.

Bi sê denga bi dengê zîzî li jin babê xwe dikit, qîrîn û hawar û gazî ye.

Dibit: «Erê, jin babê, xewnekî min dîtiye:

Cotekî ava li ber darê geneka Bîracûkê mala babê min zenzeliye;

Cotekî spîndara li ber de şîn bûye;

Cotekî reşmara pê ve hatiye;

Mehfûrek î sor î Xorisanî li bin daniye;

Kerekî beqala bi sê linga hêdî hêdî xwe li sera gihandiye;

Kewekî spî zimzim kirî, li serê zinarî di xwendiye;

Teyrekî başûkî li serê kewekî dabî, kewekî firandiye.

Dilo, ne ma yê...

Dê bila ne mînim bo siwarê xerîbiyê....

Lê warê....

Jinbabê dibêjit:

Erê, keça min Heftsedê, xewna te rast e, derew nîne:

Cotê ava Bêracûkê rondikê çavê te ye;

U cotê spîndara bejna te ye;

Cotê reşmara kezî te ye;

Û cotê sêvê Entabî memkê te ye;

Û mehfûrê sor î Xorisanî sing û berê te ye;

Kerê beqalî ew dezgirê te ye;

Kewî spî zimzim kirî, li serê zinarê, ew pismamê te Genc Xelîl Axa ye;

Zimzima li milê rastê giltekî frengî girtiye;

Û teyrê başûkî hatî li serkewekî dabî, kewekî firandiye,

Ew Ezraîl e, li ser rûhê pismamê te Genc Xelîl Axa hazir bûye.

Dilo ne ma o,

Dê bila ne mînim bo suwarê xerîbiyê...

Erê, erê, jinbabê dibêjit:

Keça min Heftsedê, xema ne xwe, xem xirab in.

Şol û teqtîr û miqederê di Xwedê ne,

Bi ser te û pismamê te tên û batal nabin;

Çigarekî bikişe, da xema dilê te, pê bilav bin;

Her mirovhewdekî gul û rêhana biçînit û xizmet bikit

Şivê desta ewil her dê ra bit.

Heftsedê dibêjit:

Erê, jinbabê, bi rast e, xema nawxwim, xem dê xirab in.

Şol û teqdîr û miqederê di Xwedê ne.

Li ser min û pismamê min Genc Xelîl Axa tên û batal nabin.

Her mirov hewdekî gul û rêhana biçînit.

Û heft cara bi rojê xizmet bikit,

Şivê desta ewil her ra ne bin.

Min wê sûnd xwarî:

Kesî piştî pismamê min î Genc Xelîl Axa bi sing berê min şahî nabit

Dilo, ne ma o,

Dê bila ne mînim bo suwarê xerîbiyê...

**ne qediyaye**

traité ne fut pas ratifié par suite de la force naissante de la nouvelle république turque. Après la signature de l'armistice avec la Turquie en 1918, le Major Soane, représentant le bureau politique du corps expéditionnaire britannique en Irak, fut envoyé à Souleymanié qu'il connaissait bien depuis ses voyages fameux au Kurdistan Méridional avant la guerre. Il nomma Cheikh Mahmoud gouverneur et il organisa un sorte de gouvernement à caractère d'autonomie locale. Le Cheikh Mahmoud manifesta aussitôt sa reconnaissance en se saisissant de tous les fonctionnaires britanniques à Souleymanié et en les jetant en prison. Ensuite en Mai 1919,il impliqua une défaite à un petit détachement britannique au passage de Benjwîn. Quoique condamné à l'exil cette fois là et à plusieurs occasions ultérieures, on lui a permis chaque fois de rentrer dans la région de Souleymanié où il ne cesse de recommencer ses intrigues contre les autorités et où il se livre même à des actes de brigandage (1). Les Kurdes du district de Souleymanié le respectent beaucoup et son autorité est immense par suite de son influence religieuse et de ses promesses passées. Notons que le mot «Cheikh» signifie, au Kurdistan, un Saint homme — très souvent le chef d'une secte de derwiches. Ces hommes jouissent d'une autorité illimitée sur leurs adeptes et ce sont souvent eux, plus que les aghas chefs de tribus, qui se dressent contre l'autorité — car ils se rendent compte du fait que l'autorité gouvernementale diminue leur influence personnelle et leur prestige. Les fameuses révoltes qui éclatèrent au Kurdistan turc depuis 1925 ont leur source dans l'opposition des Cheikhs aux réformes religieuses introduites par le gouvernement républicain car il est évident que ces réformes menaçaint l'autorité des Cheikhs. Kemal Ataturk comprit qu'il ne pourrait mener à bonne fin son plan de modernisation sans supprimer dès le début toutes les sectes de derwiches et c'est ce qu'il fit avec beaucoup de sagacité (2).

En plus des raisons politiques et économiques qui s'opposent à la création d'un Kurdistan indépendant, le caractère même des Kurdes ne permet pas l'établissement d'un tel état, tout au moins dans l'état actuel de leur développement. Non seulement entre tribus mais même entre fractions et sous-fractions de tribus règnent souvent d'âpres conflils et, entre familles, les vendettas. Les causes de ces conflits remontent aux générations passées alors que leur habitant était isolé du reste du monde par les montagnes et que chaque famille ou fraction de tribu constituait un «monde fermé», chacun dans sa vallée. Tout étranger qui voulait pénétrer chez eux était considéré comme représentant un danger, potentiel sinon actuel, pour leur sécurité. Il était donc bon de le détruire avant qu'il ne puisse nuire. Il n'est donc pas étonnant que les Kurdes n'aient jamais acueilli de bonne grâce l'autorité étrangère (3) Toutes les grandes puissances qui se constituèrent et s'effondrèrent autour d'eux, les conquérants venant de l'Est et ceux venant de l'Ouest essayèrent d'imposer aux Kurdes leur culture; ils n'ont jamais réussi. Les Assyriens, les Grecs, les Romains, les Parthes, les Persans, les Arabes, les Mongoles et les Turcs, tous ont essayé de subjuguer cette race montagnarde et tous ont échoué. Il semble que les Kurdes soient le seul peuple qui ait infligé une défaite aux Mongols, car l'histoire rapporte que Houlagou-Khan envoya une de ses armées contre les Kurdes et que ces derniers écrasèrent 20.000 Mongols devant Erbil.

Malheureusement, il ne régne pas une grande sympathie entre les Kurdes et les peuples qui dominent les pays qu'ils habitent. La haine est surtout grande entre Arabes et Kurdes, peut-être parce que ceux-ci sont Aryens alors que ceux-là sont Sémites (4). Les traits du caractère kurde sont diamétralement opposés à ceux des Arabes,

Le Kurde se tient sur ses montagnes couvertes de neige, et considère de haut en bas l'Arabe qui habite la plaine et qui lui semble un être inférieur. Quant à l'opinton des Arabes au sujet des Kurdes, elle s'exprime dans le court dicton: «Il y a trois fléaux: le Kurde, le rat et la sauterelle». Il est intéressant de noter un fait paradoxal: les chefs de tribus kurdes qui attachent de l'importance à leurs origines, s'efforcent de les retracer jusqu'à une vieille famille arabe et, si possible, jusqu'à un des premiers disciple du prophète Mohamed.

A mon avis, la transformation des Kurdes en citoyens paisibles et respectueux de la loi s'opérera par le développement des voies de communication et par la pénétration de l'éducation. Les essais tendant à disperser les tribus et à détruire leurs chefs par la force des armes ne fait que renforcer leur opposition au gouvernement central; ces tentatives causent beaucoup de souffrances inutiles et ruinent le pays. Les Kurdes sont un peuple capable, les succès de quelques Kurdes dans l'histoire le prouvent, depuis Cyrus le Grand qui conquit Babylone au VI° siècle av. J. CH. (1) et Saladin qui résista aux Croisés, jusqu'aux nombreux Kurdes qui se distinguèrent dans l'Empire Ottoman et au service de l'Etat Iraquien d'aujourd'hui. Les Kurdes sont des commerçants nés, des travailleurs très laborieux et ils sont très économes. Je crois que ces qualités se révèleront davantage, pour le plus grand bien des Kurdes eux-mêmes, par la collaboration avec des peuples plus grands qu'eux, qui remplacera avantageusement le désir de maintenir une précaire indépendance dans leurs montagnes natale. Il semble bien qu'il soit impossible d'empêcher le niveau de la vie et la culture dans le monde entier de tendre vers l'unification et cette tendance est nécessaire à l'avenir de l'humanité et au maintien de la paix. Toutefois, ceux qui ont voyagé, vécu et agi parmi les peuples primitifs assisteront à cette évolution avec quelque mélancolie; ils garderont un sentiment de sympathie et un peu d'admiration pour ces hommes qui ont su, à travers les siècles, conserver leur façon de vivre propre grâce à leur courage physique et moral et à l'obstination de leur attachement à l'indépendance.

Le Maréchal de l'Air Brook Popham ajoute en fin de séance les mots suivants; *«Les Kurdes et leurs problèmes constituent un sujet digne d'attention, mais nous ne devons pas oublier que nous ne sommes pas responsables de l'arrangement de ces affaires, et que, dans ce domaine, les intérêts d'autres états s'enchevêtrent».*

---

*(1) Cette appréciation de Cheikh Mahmoud ressemble bien à ce que nous disent les communiqués officiels du gouvernement iraquien au sujet de Mulla Moustapha, le chef des révoltes de 1943 et 1945. Mais elle ne concorde nullement avec celle d'autres anglais anglais qui tous, ventent la générosité du caractère du Cheikh Mahmoud comme celle des autres chefs révolutionnaires kurdes. Dans son «Road through Kurdistan» (Londres 1937) A.M. Hamilton écrit (p.206) à propos de Cheikh Mahmoud: «chose remarqueble, tout en résistant désespérement, le Cheikh continue à se conduire correctement à notre égard malgré le bombardement de Souleymanié... Le médecin qui se rendit à l'intérieur des lignes ennemies fut reçu par le Cheikh avec sa courtoisie habituelle et conduit auprès des prisonniers. Il constata que les officiers n'avaient que peu souffert de leur captivité: il lui semble donc qu'il ne pouvait exiger leur libération. Malgré tout, le Cheikh finit par leur rendre la liberté». (N.D.T.)*

*(2) On reconnait ici l'argument utilisé au début de la «révolte de l'Ararat», par la prodagande turque pour justifier de féroces méthodes de répression. Cet argument a fort peu de portée en raison de la rareté du fanatisme religieux chez les Kurdes. L'ampleur des révoltes était d'ailleurs telle que le gouvernement turc a bientôt du reconnaître qu'il s'agissait bien d'un mouvement national général, provoqué non pas par ses «réformes» religieuses ou autres, mais par sa politique de «touranisation» dans les régions Kurdes (N.D.T.)*

*(3) On peut remarquer que c'est la proverbiale solidarité des Kurdes,bien plus que leurs querelles intestines, qui donne au problème kurde toute son ampleur. La gravité des révoltes kurdes qui débordent les frontières politiques a provoqué des accords comme celui de Saadebad qui vise à opposer à la solidarité kurde la coopération entre les gouvernements des états intéressés (N.D.T.).*

*(4) Ce n'est nullement exact. (W.D.T.)*

# Le Roi du Kurdistan
## roman épique kurde

*(Suite)*

Sous cette fraicheur, le jeune lion s'endormit.

* * *

Kegan se réveilla. Elle se crut dans un conte de fées. Elle était entourée de tout ce qu'une fille peut désirer et de tout ce qui peut rendre heureux un être humain. On eut dit que ce que peuvent créer la main, l'imagination, l'art kurdes, était ramassé autour d'elle pour amuser ses yeux. Entre les fruits, les douceurs, les mets disposés pour son déjeuner, elle remarqua un petit poignard d'or, ciselé et inscrusté de pierres précieuses, et à côté, un papier qui portait l'écriture de Richard.

De tous les présents qui l'entouraient ce fut le seul qui fit battre son cœur. Elle le prit avec émotion. Sous cette tente où la lumière du soleil de midi faisait briller de belles couleurs rouges, vertes et jaunes, elle n'en restait pas moins prisonnière. Elle se rappela n'avoir point écrit la lettre pour laquelle le roi lui avait donné son consentement. Comment se faisait-il que la missive de Richard se trouvait déjà sous ses yeux? Elle pensa à l'amour profond de Richard qui la possédait. Que malgré ses blessures graves, il ait tout de même trouvé le moyen de lui faire parvenir ce billet, lui montra l'attachement de celui qui rendait possible l'impossible.

Elle commença de lire. Son visage marqua sa surprise. Richard lui parlait de fruits et de tapis de soie qu'il avait reçus. Elle vit bien que ce monarque, si maître de lui-même et si réservé, cachait une finesse extraordinaire sous des aspects trompeurs. Découvrant en lui un homme de cœur, elle se reprocha de lui avoir menti la veille, en faisant de Richard son père au lieu de lui avouer qu'il était son fiancé. Quel besoin avait-elle de lui cacher la vérité? Elle ne se comprenait pas elle-même.

Au dehors quelqu'un frappa des mains, tandis qu'une voix masculine demandait d'entrer. Kegan en donna l'autorisation.

Deux jeunes adolescents, l'un brun, l'autre blond, n'ayant pas plus de seize ans, entrèrent et saluèrent respectueusement la jeune fille. Elle reconnut en eux des nobles. Le blond lui adressa la parole:

— L'Emir me prie de vous dire qu'il désirerai tque vous lui accor-

POÈME KURDE

## Le berger

Il est jeune, tout jeune, il est plein d'espoir,
Son visage est clair comme l'étoile du soir.
Ses longs cheveux noirs sont amis du vent,
Il passe les plateaux en riant et rêvant.
Il sait le mystère, la beauté du silence,
Il aime les poêmes et adore la danse.
Il est grand, il est beau, il a l'air farouche,
Vous fixe et vous parle sans remuer la bouche.
Ses moutons sont si beaux et son chien si fidèle,
Il ressemble aux maitres des grandes citadelles.
On le voit quelquefois pleurant sur sa flûte,
Il aime la vie, les risques et les luttes.
Il admire le rouge, le jaune, le vermeil,
Et, dans les eaux du lac, le coucher du soleil.
Il est taciturne, se perd à l'horizon:
Ses pas sont dirigés par l'absence de gazon.

## Le nomade

Nomade sans place, me consolent les parcours.
Je promène mon ennui sur les boulevards d'amour.
Les verres changent, même douceur, même liqueur:
La joie dans mes lèvres, la meurtrissure au cœur.
A la fontaine de la vie, dans l'espoir et le doute,
Les souffrances par jets et les plaisirs par gouttes.
Elle, toi ou une autre, toujours la même chose.
Les jardins sont pleins de giroflées, de roses.
Mais alors pour quoi, pour qui je pleurs ?
Question sans reponse, raison de la douceur.

## Le fakir

A joué longuement, sur la main le désir,
Dans l'extase de l'âme brulant le plaisir.
Le serpent le caresse avalant son poison,
Du rythme de sa flûte il sont la pâmoison.
Dans son âme le feu, entre la main la flamme,
Comme une jolie femme
A la puissance
De la croyance.
Il passe les pays des passions en riant
Il contemple le cœur et le désir criant.
Il se dit le but piétinant l'espoir
Regarde dans son âme et casse le miroir.
Il boit une liqueur d'une source mystérieuse,
Et la volupté de sa blessure rieuse.
Ses cheuveux sont longs, et noirs comme la nuit,
Son regard est l'astre qui brille et s'enfuit.
Il dit : pourquoi être sultan ou vézir ?
On se sent empereur quand on est sans désir.

# Une révolte kurde est imminenté

### ECRIT UN JOURNAL FRANÇAIS

Paris, (AFP). — *Selon le journal* FRANCE SOIR, *une révolte des Kurdes serait imminente en Iran, en Turquie et en Irak.*

«Les Kurdes, *écrit-il,* sont répartis, comme on le sait, entre la Turquie, l'Iran et l'Irak. Ceux qui résident près de la frontière turque, accumulent des armes et se préparent ouvertement à la révolte».

*Et le journal ajoute que le Gouverneur de la ville de Maragueh, à 80 kms. au sud de Tabriz, a été assassiné. C'est la première fois, depuis le début du soulèvement de l'Azerbaidjan le 20 novembre qu'un haut fonctionnaire du Gouvernement de Téhéran est assissiné par les Azerbaidjanais.*

*De son côté, le journal* LE MONDE *publie une étude de son correspondant particulier sur le* «réveil du Kurdistan».

*L'auteur, après avoir fait un historique documenté sur le mouvement et l'activité des Kurdes depuis la fin de la dernière guerre, décrivant notamment les activités de Mulla Mostapha, chef kurde, se demandent ce que l'avenir réserve.*

**«Faisons ressortir que les Kurdes vivant en URSS se sont vu reconnaître des droits étendus, Ils formèrent tout d'abord une république dans le Nahkitchevan. Plus tard, le territoire kurde fut rattaché à l'Arménie soviétique, sans préjudice toutefois à son autonomie culturelle et administrative. Erivan est actuellement un des foyers intellectuels kurdes parmi les plus importants. Chaque année, de nombreuses publications y voient le jour».**

*L'auteur de l'article pose ensuite la question de savoir si les Russes se serviraient des Kurdes dans une double poussée vers la Méditerrannée et le Golfe Persique.*

**«Le Kurdistan, *conclut-il,* qui s'appuie sur les contreforts du Caucase et les rives de la Mer Noire, touche en effet à la Méditerrannée entre Adana et Alexandrette, et au Golfe Persique entre Bouchir et Behbdhan. Qui tient la Bohême tient l'Europe, disait Bismarck. Qui tient le Kurdistan tient le Moyen-Orient et ses pétroles, pourrait-on dire».**

---

**Téhéran (R)** La note soviétique déclare :

**«Des combats éclateraient et des effusions de sang se produiraient dans les provinces nord de l'Iran si de nouvelles troupes iraniennes s'y rendaient. Pour ces raisons, le Gouvernement soviétique serait forcé d'amener de nouvelles troupes en Iran pour la protection des troupes soviétiques, Etant donné que le Gouvernement soviétique n'envoie pas de nouvelles troupes en Iran, il ne considère pas sage que de nouvelles troupes iraniennes soient envoyées dans les provinces du Nord.»**

**La note dément que les rebelles kurdes aient reçu une aide russe ou que les Russes aient été en rapport avec Mullah Mustapha qui a pénétré en Iran, venant d'Irak.**

---

**Téhéran, AFP.** — **On apprend officiellement que les autorités soviétiques ont empêché les renforts iraniens venant du Kurdistan de pénétrer en Azerbedjan, aux environs de Maraghe.**

---

**diez l'honneur de déjeuner avec lui Votre acceptation lui ferait beaucoup de plaisir.**

**La voix du messager avait une telle douceur que Kegan éprouva du plaisir à l'entendre. Réconfortée déjà par les bonnes nouvelles reçues de Richard, touché par cette gentillesse de l'Emir, elle accepta et demanda aux jeunes hommes de prier ce dernier de l'attendre devant sa tente où elle le rejoindrait.**

**Rendue à elle-même, elle prit le poignard, un chef d'œuvre de cet art kurde si célèbre en Orient, et y reconnut le symbole de la liberté que lui rendait le roi.**

**Elle sortit de sa tente. Sous leurs habits d'apparat en poils de chèvre blancs plus brillants qu'une soie, et galonnés d'or, des cavaliers faisant la haie, émerveillèrent ses yeux. Un coursier noir attendait qu'elle le montât. Elle sauta à cheval et se mit en marche entre deux files de dix cavaliers.**

**Ils franchirent deux vagues de collines, longèrent une rivière où sur des cailloux rouges et blancs un gave chantait la chanson sauvage apprise à son glacier natal. Le chemin passait sous des saules qui devant leurs pas, criblaient la lumière. Ils gravirent une troisième série de hauteurs d'une terre si rouge qu'on l'eut cru une flamme. Un plateau se présenta au pied de trois montagues aux pentes lentes. Sous des couverts puissants, un hall (1) au tapis de gazon les reçut. La rivière en dessinait le contour arrondi et une cascade, issue du cœur de la chaine montagneuse, y déversait son allégresse cristalline.**

**Le roi l'y attendait.**

**Il la mena à un défilé fleuri qui aboutissait à un second hall formé par trois rochers si hauts que le regard en les mesurant d'en bas, les voyait soulever le ciel. C'était une chambre d'amour pour les palombes qui y voltigeaient.**

### V

### Les tortures de Richard

* * *

**Dans l'après-midi, des cavaliers ennemis se présentèrent en parlementaires devant le campement kurde. Au nom des Croisés, ils redemandaient la fin de la trève et la liberté d'action à partir du lendemain. Les Kurdes l'accordèrent.**

**Ils s'inquiétèrent aussitôt de savoir si leurs adversaires étaient fin prêts. Les chefs alertèrent les avant-postes et quand le soleil mit de sa lèvre rouge un dernier baiser sur le cou blanc des montagnes, les premiers renseignements arrivèrent Dans les camp des Croisés, une grande agitation régnait. Des forces importantes se déplaçaient.**

**Peu de temps après, rentrèrent les éclaireurs qu'on avait dépêchés dans la nuit pour observer les gestes de l'ennemi. Mettant à profit les blocs de granit, les ravins et autres accidents de terrain, ils avaient pu se glisser assez près des Occidentaux et observer la façon dont ceux-ci avaient divisé leurs troupes.**

*(à suivre)*

*(1) Hall appartenant au vocabulaire Kurde médiéval et ayant le même sens que le mot que nous avons cru emprunter à l'anglais, nous le maintenons dans le texte.*

Sal — 4 Hejmar — 66

Duş. 14 Kanûna Paşîn 1946

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 35 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 4 lîreyên inglîzî. Bihayê Hejmarekê; 25 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc: Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74 04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41. Edresa telg: Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

## NASKIRINA KURDISTANÊ

Naskirina Kurdistanê karekî zehf dijwar e; ji ber ko civateke zanistiyê nikare tê de bi serbestî bigere û bixebite. Emê cehda xwe bikin û eşîrên Kurdistanê ji xwendevanên xwe re, li gora taqetê bidin nas kirin. Bê şik tiştê ko emê bikin ne tewaw e, û ne jî yekcar rast e; lê her hal ji tunebûnê çêtir e. Heke xwendevanên me; di vê babetê de arîkariya me kirin; em rojekê wê bikarin, xebateke hêj kûrtir, çêtir û dorgirtîtir pêk bînin, û bêxin pêş çavan. Eşîrên Kurdistana Iraqê ev in.

Erdê Zaxo: *Hecan, Gewdan, Mamxuran, Semiriyan, Kuliyan, Şifermeniyan.* Ev eşîr koçer in, 33.000 nefs in. Axayên van Hacî Axa Kurê Mihemed Axa û Teyar Axa Xidir e; ev axa di gundên germava û Avtehlê de rûdinin. Serekê Şifirmeniya Hacî Bedir Axa ye, li Spîndarokê rûdine. Sermiyanê Semiriyan li Tilzêdî rûniştiye.

Eşîrêd erdê Zaxoyê ên din ev in: Silêvane, serek Hazim Beg, li Zaxoyê rûdine; 10.000 nifûs. Sundiye, axayên di wê Ebdî û Cemîl Axa, li Marsîsê rûniştî ne, 7.000 nifûs. Guliye, serek, Hacî Sadiq Axa Biro, li Behnûna rûdine, nifûs, 5000. *Benestaniya*, serek Huseyin Axa Xazî, li Berzûrê rûniştiye, nifûs, 4.000. *Lêfikiya*, serek, Yûsif Ismîl, li Ermiştê rûnişti ye, nifûs 3.000.

Erdê Dixûkê: *Dostikiya*, serek, Seîd Axa Smaîl; li germava rûdine, nifûs, 10.000. *Hinbiyan*, serek Şefîq Axa Smaîl, li Zêwa rûdine, nifûs, 2.000. *Mizûriya*, serek, Şêx Nûrî Brîfkanî, li Brîfkan rûdine; nifûs, 15.000. Çelê, begê wê, Ewliya, Beg, li Çelê rûniştiye.

«Xwendevanên me ba'a xwe daue ko em berî navê eşîr, bi dû wî ve, navê serek, di pişt re navê gundê ko serek têde rûnişti ye û dawî nifûsên eşîrê dinivîsin; êdî em bawer dikin ko ne hewce ye, navê serek, û gund û nifûs, her û her du car bikin.»

Erdê Imadiyê: *Berwarî* jorî, *B*erwarî jêrî; Tewfîq *Beg* Hacî Reşîd *Beg*; Derşîsê, 50 000. *Oramariya;* Sedîq *Beg* kurê Sîto axa; Nêrwa; 6.000. *Bamirnî;* Şêx *B*ehaedîn Neqişbendî; *B*amirnî; gund 50. *Zêbarî;* Mehmûd Axa; Zêbar; 7000 mal in.

Erdê Barzanê axa bile; *Rêkaniya*, Kelxo Axa, 8000. *Mizûrî jorîn, Mizûrî jêrîn*, Xurşîd Axa, 15.000. *Berojî;* Qadir Axa Osman, *Barzan*, 18.000. *Şêrwanê Mezin*, Mihemed Axa, Barzan, 22.00. Şerfan; Ebdilah Axa, Barzan, 10000. Ev her pênc eşîrên jorîn, ev eşîrên dilawer in ko arîkariya Mela Mistefa Paşa kirine. Yezîdiyan pênc lek in; Şêxan, Denan, Dasikan, Reşikan û Dasiniyan; serekê wan Miawiye beg kurê Seîd beg e, li Beadirê rûdine, 500 gund in.

Axa Rewandizê: *Balek;* û Wertî; Şêx Mehmûd Axayê Welaş; Mihemed Emîn Axayê Nawpirdanê; Welaş; Nawpirdan; gund, 300; di nahiya balek de rûniştî ne. *Bradost*; Mehmûd begê bradost; Sîdekan, gund, 200, di nahiya bradost de, rûniştî ne. *Şikak*, gulîzar Xanim û kurê Seyid Taha Pûşo, li havînê, der jûjelê û li zivistanê li Rewandizê rûdinin, gund 10. *Sûriçiyan*, koçer in; Xidir Axa; li bakurê Rewandiz, nifûs; 10.000. *Herkiyan;* koçer in; Ebdilkerîm Fetah Paşa; nifûs, 15.000. *Zengenaniyan;* Mihemed Axa; Zengene; nifûs; 5000. Bolekî; navê Axê ne hatiye zanîn; ew li gundê Bolekya rûdine, 600 mal in. *Herûtî;* Boyêz; beg; Eshed Axa; Çinaran; gund 200. *Şiwezûrî;* Mistefa Axa, Gundejûr; gund 70. Dûlemerî; Begust Axa, badilya; gund 20 Serçiyayî; Xidir axa; Serçiya, gund 15. *Xeylanî;* Kerîmxan; gund 300. *Namsal*, navê axa û gundê wî ne hatiye seh kirin; 700. mal in. *Mentik;* Evdilah axa, 200. mal in.

Erdê Şingalê; Sincarê: *Xatûna 160* gund in; *Dasikan, Reşikan, Dasiniyan, Hewêryan 25.000* kes in; serekê wan; Xwedêda kurê Hemo Şero; û Dawidê Dêwid; ji xatûna pê ve hemî li ser dînê kurdan ê berî ne: eyzedî ne. Qeza Telaferê; *Gergeriyan;* Celûd axa kurê Sadûn axa; çend kes in, me seh ne kir.

Erdê Akire, Eqre: Rejûkera; Seîd axa, Zînana, nifûs, *3.000. Goranan;* Smaîl axa, Berdereş; *6.000. Sûriçiyan;* Şêx Reqîb; Serderiya; *15.000. Zêtkan;* Memê axa; *Şikeflhindiga; 4.000.* ji wan reeşairê sebhe dibêjin; me nav û nîşanê wan hêj qenc seh ne kir; bitenê em dizanin ko serekê wan di gundê berde-Reş de rûdine û hemî pev re *200* gund in.

Erdê Hewlêr: *Dizeyî;* Dizdeyî, Dizdeyan; Xidir Paşa; Ezîz axa; Deşta Qereçoxê, li nahiya Dîbeya; *10.000* mal in; li nîroyê Hewlêrê. *Gerdî*; Cemîl û Mecîd axayê gerdî; Kor; *200* mal in; li rohelatê Hewlêrê. *Herkî;* betah axa; Mîraxûr, *2.000* mal in, koçer in, havînê de diçin Kurdistana Îranê. Şêx biziniyan, Mihemed axayê Huseyin axa; Deşta Şêxbiziniyan; 6.*000* kes in.

Erdê Koysinceq: Şedela; şêx Ebdilkerîm; şedal *30.000* kes in.

Erdê Sileymanî: *Caf;* Dawid beg, Hemîd beg; Helebçe; 50.000 mal in. *Pişder;* Babekir Axa, Ebas Axa; Q elhet Dize, Mamet, gund 500. *Hemawend;* kurekanê Kerîm beg; Çemçemal; gund 700. *Simayêl Ûzerî;* simayêl axa; silêmanî; gund 50. Hewreman; kurekanê Cafer siltan; Temêle; gund 400. Merîwanî; Mehmûd Xan; kanî sanan; 420 mal in; koçer in.

Erdê Kerkûkê: *Kakeyî;* Fetah Xelîl Axa; Heftexar; 500 mal in. *Talebanî;* Şêx Hebêb; Kerkûk; 2000 mal in. *Zengene*, Mihemed Kerîm axa seyamensûr; 150 mal in. *Dawide;* Dara beg; Tawox; 3000 mal in, Berzince; seyid Ehmed Xaneqa; Kerkûk; 7000 mal in. Cebarî; Cebar seyid Mihemed; Cebarî; 7000 mal in. Şiwan, navê serek ne hatiye zanîn, 7000 mal in. Zend; Koxa Xenî, Kifrî; 200 mal in. salihî, navê serek ne hatiye seh kirin; 400 mal in.

Nahiye Şeqlawe: Xoşnaw; sedîq beg; Şeqlawe; gund 300Qeza Mexmûr: . Dizeyî; Xidir Paşa; Kendînawe; gund 400.

Nahiye Helebçe û Pêncwîn: Mukriyan; Şêx mehmûd, Çiyayê sûrdaşî. Rayet; Eb as axa; Rayet; 2000. mal in.

Qeza Raniye: bilbas; Xebûr axa; sengesor; gund 300. bûrî; mihemed axa; gund 100.

Erdê Diyale: Şerfbeyanî; Osman beg; Tahir beg; Horên û şêxan; 800 mal in. bacelan û bavkê wê Cimûr; Evdilah axa; Ismaîl axa; mecîdxan salar, mecîd Qadir axa; Cihanbexiş; Xaneqîn nahiye Qoretû; 1500 mal in, Talebanî; şêx Wehab (naib e) û şêx mihemed şêx seîd; Qoretû; 500 mal in. Kakeyî; Paşa Hemûd; Ebas Ûzeyir axa; Xaneqîn; 20 mal in, Delo; 1000 mal in. Delo li *K*ifrê jî hene.

Erkewazî; Elîxan; Xaneqîn; 800 mal in. Zergoş; muhsin Ezîz, Qizlerbat; 500 mal in. Qere-ulus; navê serek ne hatiye zanîn; ew li dora mendelî rûdine; 1000 mal in. sûremêrî; *K*oxa mibarek, mihemed Ezîz; li dora Xaniqînê rûdinin. 500 mai in. Ev çar eşîrên jorîn, berî bi 200-300 salan ji Lovistanê hatine, lor û şîne û xwerû kurd in.

Di *K*urdistana Iraqê de, hin eşîrên din û di nav wan de, eşîrên mezinî mîna Piştkoh û goran jî hene ko me hêj xweş seh ne kiriye. Piştkoh 40.000 mal in. goran xwedî heft lek in; û serekê her lekî re siltan tête gotin; heft siltanên goran hene. Herwekî xwendevanên me dibînin, rûniştinanên bajar û şaristanên *K*urdistana Iraqê, ne hatine di nav hejmartiyarên jorîn.

Hejmara ko bê emê bi eşîrên *K*urdistana Îranê mijûl bibin.

**Çîrok**

## Sînema bi ser dûman

*Zemanekî zilamek hebû, kurekî wî û keçkika xwe hebû û dîya wan tine bû; navê keçê Sînema bi ser dûman bû. Zilam û kurê xwe va çûn hecê, û keça xwe li mal hiştin, nan û av dînan cem, û jê ra got: derî ji kes ra vemeke heyanî em ên, û bi mileyê gund ra got: her rojekê ti kê herê ber deriyê mala me û li halê Sînemê bipirsê; û çûn hecê. Rojekê dilê mile pîs dibe û bi sînemê ra dibêje derî veke, min ji te ra henarek. sînemê jê ra got: ez derî ji kes ra venakim. Mile got: destê xwe dirêj ke ez bi te dim. sînemê destê xwe dirêj kir. Mela mekîn bi destê tsînemê girt û jê ra got: derî veke, ya ezê destê te qit kim. sînemê derî vekir. Mela jê ra got: bi mi ra bi yek be, ya ezê te bikûjim. sînemê lê vegerond hana nabe, emê serêbişûn û paşê emê kêfa xwe bikin. Mile got: baş e. sînemê av jê ra keland û got de were, mile hat û xwe tazî kir, sînemê ava kelî li serê mile kir; û mile bê aqil ket. sînemê bi desta girt û dîna derva.*

*Paşî, bi çend seatan aqil hat serê mile û çû mala xwe. Mela çû cem pîrek cazû û jê ra got: sînemê ji min ra hûnî hamamê; ezê deh zêra bi te dime.*

*Pîr çû deriyê mala sînemê; û jê ra got: derî veke ez xaltîka te me; paşê sînemê jê ra derî vekir. Rojekê pîrê bi sînemê ra got: rabe em herin ser tirba diya te sînem qail bû û vê ra çû. sînemê didê gêrî û pîr xeyza xwe le çavê dihêlê, paşê hatina mal. Rojekê pîrê jê ra got rabe em herin hemamê. sînem qail bû, xwe ra bir; û Mile jî li hemamê bû. Mile bi destê sînemê girt û jê ra got: ti bê bi mi ra bi yek bê. sînemê jê ra got: baş e; ema hana nabe; tê araqî vê hûnê; emê vexwin û paşê emê kêfa xwe bikin. Mile araqî hanî û rabûn vexardinê; sînem bi dizî dirijîne û mile jî vedixe. Mile serxoş bû û ket erdê. sînem rabû û çu mal.*

*Dema mile bîst; bavê sînemê ji hecê tê; mile çû cem û got: her rojekê sed xort derin mala te, cem keçka te. Hecî got: bi lawê xwe ra: here vê orispê bikuje û çavê wêna bîne ji mi ra. Kur çu ber derî û ban sînemê kir got: derî veke; ez birayê te me; sînemê got ez derî venakim ti birayê minîse gistîlka xwe pêşe mi ke.*

*Brêk gistîlk pêşî kir. sînemê derî vekir û gelek dilxeş bû. Brêk jê ra got: çavê xwe girêde û li paş min siwar be; sînemê li paş siwar bû û di xew va çû, brayê sînemê, sînem bir berda çiyakî asê û hat mal. Paşê sînem bi xwe hesîa û seh kir kesik tineye. Rojekê, kurê paşakî hat nêçîrê; nav vî çiyayî. Carekê, seh kirin ko kûçkê xwe çû û rewî tiştekî; ber vî tiştî çûn, nêrîn ko keçkek bandike: me tên ez tazî me; kurê paşê got: be va; cilê min jî ramila li xwe ke û were: zilamê kurê paşê çûn û hanîn kurê paşê bi xwe ra bir hemamê û ser berber û cilenê pak û rind lê kirin. Kurê paşa jî li keçka na ecbîneye; dema sînem dî; dilê xwe ketê û bir.*

*Paşî saleke kurekê xwe bû; dema kurê paşê seh kir sînemê bîra bav û brayê xwe kirî. bi mileyê gund ra û bi du erebana şande mal. Mile bi sînemê ra got: were em nanini xwe bixin. sînem hat rûnişt. Mile bi sînemê ra got: ti kê bi mi ra: bi yek be, ya jî ezê kurê te serjêkim; sînemê got: şerjêke; mile kurê sînemê dikuje û ban sînemê dike ;tikê bi mi ra bi yek be; ya ezê te jî bikijim; sînemê got:bisebire; ez du rika't limê bikim paşê min bikije; sînem rabû û çu limê bike û ban Xwedê kir û bi emrî Xwedê bû marekî û ket nav kevran. Paşê mile çu cem kurê paşê û got ev çilil heywanek te biribû; ha işte bi çolê de revî û çû.*

*Paşê; sînemê ban xwedê kir û emrê xwedê bû; keçik û hat pariyê kurê xwe da berhev û ban xwedê kir, bi emrê xwedê can pê hat û kincin pîs lê kirin û çû cem şivanekî got: ti va berxî nafrosê, got: ez bi pera nafroşim yekî çu cem yekî din; paşê çu cem yekî din got belê ezê bifroşim; bi du zêra. sînemê kirî û postê wî çêkir û girte xwe û çû cem mala bavê xwe û ji wan ra got: ez kê li cem we bi xadim bime; gotin baş e. Rojekê kurê paşê û mile û mileyê din va hatin mala hecî;paşê ban xadimê kirin û jê ra gotin: ji me ra bi kilama di. xadim got: hemo derî bigirin u kilît bi des mi din ezê ji we re bi kelam dim. Kilît bir û istira: li ser xwe; paşê çû cem bavê xwe û jê ra got û postê xw dîna ber: ez keça te me û ev ji mêrê min e û ev herdu mile, ez hona hona kirin, rabûn serê her du mileya jêkirin û sînem jî da kurê paşê. Mirazê sînemê bû û mirazê we jî bibe.*

Mihemed Cafer şêx Ismaîl Zade

## Rojnameyên Cihanê

### û Pirs û doz û dehwa Kurdistanê

*Ev çend meh in rojnameyên cihanê bi pirs û doz û dehwa Kurdistanê mijûl in; ne maze rojnameyên bêrûtê yên bi zimanê erebî û frensizî; û yên Parîsê mîna «Le Monde», «France Soir», «Combat», «Renaissance» û hin rojnameyên emerîkanî û rojnameya ingilîzi «News of the World»; rojnameyên Felestînê mîna «Palestine Post» zehf rojnameyên ko bi zimanê ibranî derdikevin; rojnameyên Misrê yên frensizî û erebî; û rojnameyên Yewnanî; di heqê Kurdistanê de û li ser daxwazên neh milyon kurdên ko xwedî erdekî mezin in-pênc sed hezar kilomêtir çargûşebendine hêja; nivîsarine dûr û dirêj belav dikin û dibêjin ko miletê Kurd ji bona istiqlala xwe, ji bona azahî û serbestiya xwe xwîna xwe rijandiye û îro ji direjîne û niho Kurdistanên Tirkiye, Îran û Iraqê bi destê Civatine baş saz û terlîbkirî têne gerandin û îcar xebata dehwa Kurdistanê ji her wextî bêtir û çêtir xurt e; û di vê demê de ji bona mileteki mezin, ji neh milyon peyan bihevketî, hêsîrî çênabe û rahetiya dinyayê û nemaze silametiya welatên Rohelatê Nîzing û navîn, bê safîkirina pirsa Kurdistanê pêk nayê.*

### Di Civana Londrê de

*Li gora telegrafa ko nûçegihayê ejensa frensizî A.F.P. ji Enqerê belav dike; têde tu şik nîne ko pirsa Kurdistanê di civana Londrê de, ya miletên yekbûyî wê bikeve axaftinê.*

# Tefsîra Quranê

73 - Lawên Israîl ji me re sund xwari bûn û me ji wan re pêxember şandin, lê her cara ko ji wan re pêxemberek dihat û emrên wî ne li gora dilxwaza wan dibû, wan ew dikuştin, an gotina wî pûç û pêxemberîtiya wî inkar dikirin û digotin, ew derewan dike.

74 - Ew ji xwe re hisab dikirin ko wî emelê wan bê ceza wê bimîne ji ber vê yekê dilê wan hişk bû, wan rastiyê ne didîtin û nê jî dibihîstin, piştre tobedar bûn û Xuda toba wan qebûl kir, paşî ji nû ve piraniya wan asê bûn û dîsa rastiyê ne dibihîstin û ne didîtin; Xuda emelê wan dibîne.

75 - Ji Filan, yên ko got: Xuda, Mesîh kurê Meryemê ye; ew kafir bûne. Mesîh ji wan re got: Gelî lawên Israîl, ji Xudayê xwe re perestişê bikin; ji ber ko ew Xudayê min û we ye; yên ko tiştekî dikin hevber û hempayê Xwedê; ji wan re bihuşt heram dibe, qerergehê wan dojeh e û kes ni kare arîkarê wan bibe û wan jê derîne.

76 - Ji Filan yên ko got, «yekî ji sê Xudan Xuda ye» kafir bûne, ji Xuda pê ve tu Xuda nîne û xuda yek e; heke ew dev ji wê gotinê bernadin kafir dibin; û kafirên di wan bi ezabekî giran wê bêne êşandin.

77 - Ma ew na xwazin dest ji wê gotinê bikişînin, vegerin riya Xudayê xwe, tobedar bibin û efiwa Xuda bixwazin! Xuda ji tobedaran re tobe dide, di gunehên wan dibore, Xuda delal, piyar û dilovan e.

78 - Mesîh kurê Meryemê, mîna pêxemberên ko beriya wî hatine pêxemberek e, diya wî Meryem, bi her hewayî jinikeke pak û dilrast bû û her du jî, weke mirovên din dixwar û vedixwarin, insan bûn; binêre em çawan ayetên xwe şanî wan didin û ew çawan mirûçê xwe jê dizivirînin û pê zendemayî dimînin.

79 - Ma hon dixwazin, ji Xuda pê ve, ji tiştekî din re jî; ibadetê bikin, tiştekî welê ko ne qencî û ne jî xirabiya wî dikare bigehe we, yê bihistiyar û zana Xuda ye, ew emelên we dibîne û gotina we dibihîse.

80 - Gelî xudankitêbino.. neheqiyê me kin, dev ji rastiyê bermedin û derbazî sînorên dînê xwe me bin û me kevin pey mezinên xwe yên ko beriya hatina Bezma Muhemed riya xwe şaş kiri bûn û xelkê xapandin û ji riya rastiyê derketin.

81 - Heçî ji lawên Israîl kafir bûne, Xuda li wan bi zimanê Dawûd û Îsa kurê Meryemê lanet kiriye; ji ber ko ew asê bûne û tada li emrên Xwedê kirine.

82 - Wan destên hev û du ji kirina xirabî û ji bêdînîtiyê şunda venedigerandin, emelê wan çiqas kirêt û bêkêr bû.

83 - Tu dibînî ko piraniya wan hevalîtiya dîn-nezanan dikin. Ew ji bo dawiya nefsa xwe û ji bo roja piştdawiyê çi tiştên kirêt û bê xeyr li hev tînin; Xuda ji wan dienite û ewê bikevin ezabî û tê de her bimînin, jê derketina wan nîne.

84 - Heke wan xudankitêban, baweriya xwe bi Xuda û pêxember di wî û bi kitêba ko jê re hate dahatin bianiyana êdî wan dîn-nezana ji xwe re ne dikirin heval, lê çi feyde piraniya wan fasiq in.

85 - Lê tu bibînî ko di nav mirovan de cuhî û dîn-nezan ji her kesî bêtir dijminê bawermendan in; û yên ko baweriya xwe anîne û dibêjin «em file ne», ew ji her kesî zêdetir nîzîkî misilmana ne, ji ber ko di nav wan de keşe û mitranên hene û ewê ha ne nefsmezin in.

86 - Her wekî ew dizanin ko Quran ji pêxemberê Xuda re da dahatin, kitêba Xwedê ye, gava Quran tê xwendin ew bi têsîra rastiya hikmên Xwedê dest bi girînê dikin û dibêjin: «Xudayê me, me baweriya xwe aniye, em pê şehdetiyê didin, navê me jî weke şahidekî binivîse cem xwe.

87 - Ma çima em baweriya xwe bi Quran û pêxember ne yinin? Em lavekarê kerema Xudayê xwe ne, em jî dixwazin ko Xuda me bigihîne peyayên xwe ên baş.

88 - Xuda ew gihandin sewaba xwe, ewê bikevin buhuştên têr av û kanî û tê deher bimînin, ev şabaşê qencîkera ne.

89 - Yên ko kafir bûne û ayetên me inkar kirine û derew bi alî ayetên me ve dane, ew ehlê dojehê ne û tê de her dimînin.

90 - Tiştên rind û xweş ko Xwedê ji we re helal kiriye, ji xwe re me kin heram û tada li emrên Xuda me kin, Xuda ji tadakeran hez na ke.

91 - Ji tiştên çak û baş ko Xwedê ji we re helal kiriye bixwin û vexwin û li gora emrê Xudayê ko me pê baweriya xwe aniye bimeşin.

92 - Seba sundên we ên bê hemd Xuda we berpirsiyar na ke; lê heke we qesdanê sund xwar, ji we re kefaret divêtin, kefareta wê ev e: divêt hon deh belengazan bi xwarina hêja ko hon ji mirovên di xwe re didin; têr bikin; an deh belengazan bibijêrin û her yekî ji wan re destek cil bidin, heke hon ni karin wan tiştan pêk bînin; divê hon sî roj rojiyê bigirin; ev kefkaretên baweriya we ne, baweriya xwe biparêzin, Xwedê hikm û ayetên xwe pêş we dike ta ko hon şikirdar bibin.

93 - Gelî bawermendino... vexwarina şerabê, leyistina qumarê, ibadeta pût û sûretan û vekirina falê tiştên bêkêr û şuxlên şeytên in, destên xwe ji wan tiştan bikişînin ta ko hon bigehin qenciya Xwedê û ji ezabê xelas bibin.

94 - Şeytan dixwaze ko hon şerabê vexwin û ibadeta pût û sûretan bikin û qumarê bileyizin ta ko hon dijminê hev û du bibin û li hev bikevin û Xuda me yinin bîra xwe û nimêja xwe me kin û ji riya Xuda derkevin. Hon dibînin ji we re kirina wan tiştan çiqas xirab in.

95 - Bindestiya emrê Xuda û pêxember bikin, bê emriya wan me kin, hey dêna xwe bidin neyarê xwe Şeytên, çavê xwe vekin û bizanin ko heke we dest ji pêxember berda, hon riya xwe şaş dikin, ji ber ko wezîfa pêxember şîret û pêşkirina riya rastiyê ye, heke hon dest ji pêxemberê xwe berdidin divê êdî hisabê dawiya xwe bikin.

96 - Yên ko baweriya xwe anîne û qencî kirine; heke ji tiştên ko hatine heram kirin; berî heram bûne wan; xwarine ji wan re ne tu guneh e, lê divê ew ji Xudayê xwe tirsiyar bibin û qenciyê pêk bînin û dev ji tiştên heram berdin û baweriya xwe bi heram bûna tiştên ko Quranê de hatine gotin û hejmartin bînin, û hey ji Xuda bitirsin û qenciyê pêk bînin, Xuda hejî qencîkeran dike.

97 - Xuda, bi wextê Hecê û bi nêçîra destan û bi tîr û kevanê hon ceribandin û Xwedê dixwest pê, yên ko baweriya xwe bi tiştên xeybê mîna wehî û roja piştdawiyê tînin û yên ko baweriya xwe pê na yênin ji hev veqetîne û wan nas bike, paş vê ceribandinê ji vir vê da; yê ko di dema Hecê de nêçîrê dike, divê bizane ko jê re ezabekî giran heye.

98 - Gelî bawermendino... di Hec û Emrê de nêçîrê me kin, yê ko di, wê demê de bi hemd ji heywanên nêçîrê heywanekî dikuje cezayê wî di Kabê de şerjêkirina qurbanekê ye, divê bihayê qurbanê bi qasî bihayê heywanê nêçîrê ê kuştî be; û divê du pispor li ser bihayê qurbanê hikmê xwe bidin, heke qurbanek bi dest ne ket; divê li gora bihayê qurbanê zad bikire û ji belengazan re belav bike, her belengazekî re midek; an ji bona her midekî rojekê rojiyê bigire, ta ko giraniya emelê xwe tam bike, û êdî dest jê bikişîne, Xwedê di gunehên mirovên ko beriya vî emrê Xuda di dema Hec û Emrê de nêçîrê kirine dibore, lê Xwedê ji yên ko piştî emrê Xuda nêçîrê dikin ewda xwe hiltîne, Xwedê xweyî qudret e û tola xwe vedike.

99 - Dema Hecê de, di behrê de masîvanî û xwarina goştê masiyan ji we re hate helal kirin; ta ko hon li mal û di rê de jê bixwin û idara xwe pê bikin, lê nêçîrvanî di dema Hecê de ji we re heram e, ji Xwedê bitirsin û ji bîra me kin ko hûnê vegerin ba wî.

100 - Xuda navê Kabê Mala Miqedes danî û pê qedrê wê bilind kir û Mala Miqedes kir ewlegehê xelkê û çend mehên salê jî kir mehên miqedes û demên ewleyiyê ji ber ko di wan mehan de; tu kes; na be ko bê te kuştin û bi emrê şerjêkirina qurbanan û bi destûra xemilandina wan û emrê belavkirina goştê wan; wî xwarina xelkê da, ta ko hon bizanin ko Xuda her tiştên erd û ezmanan dizane û zanîna Xwedê dora her tiştî digire.

101 - Bizanin ko cezayê Xwedê giran e û Xuda efiw dide, Xuda dilnerm e.

102 - Wezîfa pêxember pêşvekirina emrên Xuda ye, tiştên ko hon aşikare dikin an vedişêrin Xuda pê dizane.

103 - Çê û neçê ne mîna hev in, qedrê tiştekî ne bi piranî lê bi qenciya wî ye, eger jî tu ji piraniyê hez dikî, tiştekî kêm û çak ji tiştekî pir û xirab çêtir e. Gelî mirovên bijîr.... ji Xudayê xwe tirsiyar bibin heta ko hon bigehin riya rastiyê û serfiraz bibin.

104 - Gelî bawermendino... ji pêxemberê xwe tiştên welê me pirsin ko heke cuhwaba wan bihata dayîn, hon xemgî dibûn, li ser hertiştî emrê Xuda di wextê xwe de, di Quranê de wê bê gotin, vê gavê ji pêxemberê xwe bipirsin, ewê ji we re bide zanin; kirina wan pirsan Xwedê efiw dike, Xuda di gunehên xelkê dibore, Xwedê piyar e.

105 - Miletên beriya we jî, ji pêxemberên xwe pirsên wilo kirin û gava ji wan re cuhaba wan pirsan hate dayîn pê kafir bûne.

106 - Xuda di heqê derewan de ko we navê wan Behîre, Saibe, Wesîle û Exame daniye tu tişt ne gotiye, ew jî mîna dewarên din heywan in, lê yên ko kafir bûne ji xwe re derewan dikin û derew bi alî Xuda ve jî didin û piraniya wan nezan in, seh na kin.

107 - Gava ji wan re tête gotin, werin û biya kitêba ko Xuda da dahatin û pêxemberê di wî bikin, dibêjin dînê bav û kalê me besî me ye; bav û kalê wan nezan û riya xwe şaş kiri bûn ma ev jî rabûn biya wan kirin, ma ev çawan besî wan dibe? Ma tiştekî nerast kengê şayesteyî hejkirinê dibe?

108 - Gelî bawermendino... dîn û nefsa xwe ji kafiran biparêzin û li ser riya rastiyê bimeşin, zererê mirovên ko riya xwe şaşkirine na gihe we, honê vegerin ba Xwedê û ewê di roja piştdawiyê de emelên we ên çak û xirab şanî we bide.

109 - Gelî bawermendino... gava mirin nîzîkî we dibe û hon dixwazin wesiyetekê bikin, ji mirovên di xwe banê du şahidên adil bikin, eger hon rewingî ne û di welatê xerîbiyê de ne û mirin nîzîkî we dibe û dixwazin wesiyetekê bikin ji mirovên xerîb banî du şahidan bikin; heke ji dilpakiya şahidên xerîb şik ket dilê we; banê wan bikin, wan bisekinînin cem xwe û piştî ko şah-i

dan nimêja xwe a nîvroyê kir divê ew sund bixwin û bêjin: em şehdetiya xwe seba tu tiştî venaşêrin û em ne timakarê malê mîrathiştene, em şehdetiya xwe ji bo Xwedê li gora rastiyê didin û dizanin ko bi veşartina şehadetê em gunehkar dibin.

110 - Lê heke hate seh kirin ko şahidên xerîb bêbextî kirine vê gavê ji mirovên mîrathişte du kes dikevin cihê wan û şehdetiyê didin, herwekî ew mirovên mîrathişte ne, ji şehdetiyê re ji ên din şayestetir û layiqtir in û ew bi anîna navê Xuda sund dixwin û dibêjin: şehdetiya me di xuyakirina heq de ji yên din rast-tir û paktir e û em derbazî sînorên rastiyê na bin û em dizanin ko me wisa bikira em ji zaliman dibûn.

111 - Bi vî awayî, ji şahidan re dana şehdetiyê li gora rastiyê hêsanî dibe; ji ber ko şahid ji xwe re hisab dikin ko heke wan sundekî derewîn xwar heye ko ew tê seh kirin û ew pê riswa û şermîn dibin û bi vê melhezê dest ji sundên derewîn dikişînin û bi dilpakiyê şehdetiyê didin. Ji Xudayê xwe tirsiyar bibin, guhdariya emrên wî bikin û bizanin ko Xuda mirovên neçak na ke riya rastiyê.

112 – Rojekê Xuda pêxemberên xwe wê bicivîne û ji wan re dê bêje: «gava we ji xelkê re got, werin li ser riya rastiyê, wan çi got»; pêxember bêjin: em tiştekî nizanin, yê ko veşartiyan dizanî tu î.

113 - Wê demê bînin bîra xwe... Xuda got: Îsa kurê Meryemê... nîmet û qenciya ko min da te û diya te bîne bîra xwe, min te bi rûhê-miqedes zexm kir ta ko tu di landikê de û di mezinahiya xwe de jî bi xelkê bipeyivî û şîretan li wan bikî û min tu hînî kitêb û hikmetê, Tewrat û Incîlê kir û gava te bi destûra min ji heriyê şiklê teyrekî çêkir û lê pif kir ew bi izna min teyrek bû û dîsa bi destûra min te çavê koran vekir û wan dît, nesaxiya miskînan sax kir û te mirî vejandin û wan ji gorinê derêxist û gava lawên Israîl, her çend jî tu ji wan re bi ayet û mûcizan hati bû yî,direjî te kirin, min destê wan ji te da kişandin, gava wan ev dîtin, yên ji wan ko kufir dikirin got: ev sihirbaziyeke aşikare ye.

114 - Dîsa bîne bîra xwe... gava min emrê xwe-ko hewariyan divê baweriya xwe bi min û bi pêxemberê min bînin-xist dilê wan, Hewariyan got: me baweriya xwe aniye, Îsa, tu şahidê me bibe, em misilman in.

115 – Gava Hewariyan ji Îsa re got: Xudayê te dikare ji me re ji ezmên sifrekê bi nan û zad bide dahatin, Îsa got: heke we baweriya xwe aniye, ji Xudayê xwe tirsiyar bibin.

116 - Hewariyan got: em dixwazin ji wê sifrê bixwin û dilê xwe pê qanî bikin û em dil dikin bizanin ko tu bi her hewayî ji me re rastiyê dibêjî û tu pêxemberê Xwedê yî û em dixwazin pê şahidên yekîtiya Xwedê û pêxemberîtiya te bibin.

117 - Îsa kurê Meryemê got: Xuda û xudanê me, ji me re ji ezmên sifrekê bide dahatin, bila roja dahatina wê sifrê; ji me re û ji çêliyên di me re cejnekê be û dahatina wê sifrê nîşanek ji mezinahiya te û delîlek ji pêxemberîtiya min bibe, Xudayê min, me xweyî bike, nandayê mezintir tu î...

118 - Xuda got; ezê ji we re wê sifrê bidim dahatin, lê ji wî paşî yên ko ji we kafir dibin, ezê wan bi ezabekî welê biêşînim ko min heya niha tu kesî bi wî awayî ne êşandiye.

119 - Wê demê bînin bîra xwe... Xwedê di roja piştdawiyê de, ji Îsa kurê Meryemê re wê bibêje û jê bipirse: te ji xelkê re gotiye, hon ji Xuda pê ve min û diya min jî, ji xwe re bikin xwedê?

Îsa wê bibêje, xudayê min, ê mezin tu î, tu bê hevber û hempa yî, ez evdê te me, ez çawan dikarim tiştekî ne rast bêjim, ev ne layiq û şayesteyî min e, heke min wiha bigota, te ê bizaniya, dizî û aşikare; tiştên ko di dilê min de veşartî ne tu pê dizanî, lê ez tiştên ko tu li cem xwe vedişêrî nas na kim, tu veşartiyên her tiştî dizanî;

120 - Min ji wan re bitenê tiştên ko te ji min re emir kiriye gotiye, min ji xelkê re got ji xudayê min û xwe re ibadetê bikin û wextê ko ez di nav wan de bûm, min dêna xwe dida wan û min ne dihişt ko ew tiştine bê rê bêjin; piştî ko te ez mirandim û ez hilanîm, ba xwe dibna xwe dida wan û tu her tiştî dibînî û dizanî.

121 - Heke tu wan bi ezabî diêşînî, ew evdên te ne, li gora daxwaza xwe bi wan dikî û eger di gunehên bawermendan diborî dîsa emrê te ye; yê xudanqudret û fêris tu î.

122 - xuda dibêje, mirovên bawermend di roja piştdawiyê de wê bibînin, dilpakiya wan çawan bikêrî wan bê, ji bona wan bihuştên têr av û kanî hene û ew tê de her bimînin, xuda ji wan wê razî û dilxweş bibe û ew jî ji xudayê xwe wê razî û pê şikirdar bibin û bextiyariya mezintir ev e.

123 - Erd û ezman û her tiştên ko di wan de ne milkê xwedê ne, û ew bi her tiştî dizane.

# MIRÉKA CIHANÊ



**Qehwa Vexwarineke Hêja ye**

Hemî xelkên Cihanê ji vexwarina qehwê hez dikin. Qehwa di welatên germ de çêdibe. Wêneya me xe kên Hindî-Çîniyê pêş me dike yên zehf qehwe diçinin.



**Payetextê Çekoslovakyayê Prag**

Payetextê Çekoslovakyayê *Prag* şaristanekî mezin û spehî ye; di vî bajarî de 800.000 peya rûdinin. Rûnişîmanên erdê Çekoslovakyayê 14 milyon in.

**Strana Kurdî:**

# HEFTSEDÊ

**-2-**

Lê warê...
Erê sibeye, li min tişta zuwa.
Heftsedê dotmama Genc Xelîl Axa li jor tewla mala babê xwe ketiye;
Hespekî qutanêr deraniye.
Tengê wî şidandiye,
Bi şev û rojê ajotiye,
Li serê duriyanê sekiniye,
Pişt qefla başbazerganê rûniştiye,
Têto başbazerganekî misilmana.
Heftsedê dibêjit: Başbazerganê misilmana:
Tu bi Xwedê û Mihemed pêxemberana,
Te pismamê minê Genc Xelîl Axa ne dîtiye li welatê Xeyran û Xirban,
Bajarê kola Mehmûdî li Tilsîn û Milsîn welatekî xerîbi ye?
Başbazerganî dibêjit:
Erê, Heftsedê, pismamê te Genc Xelîl Axa emrê Xwedê kir;
Min veşarto bi vê destana.
Ez hatim şûnana.
Heftsedê dibêjit: Erê başbazerganê misilmana,
Hêviya min ji Xwedê û pêxemberan e,
Hêj tu ne gihiştî mal, termê te dâyim ser piştê di van hespana.
Lê warê......
Têto başbazeraganekî filana.
Heftsedê dibêjit:
Tu bi Xwedê û Îsa pêxemberana,
Te pismamê min Genc Xelîl Axa ne dîtiye bi welatê di xeyran û xirbana.
Li bajêra kola Mehmûdî, Tilsîn û Milsîn, bajarekî xerîbiye?
Başbazerganê filana dibêjit:
«Pismamê te Genc xelîl Axa çi nav û nîşan e?»
Heftsedê dibêjit:
Roja ji mal derketî, suwarî hespekî boz î bayaziye;
Simkotî, simkirî, difin zornayî ye, stêra Mexribî rawesta ye,
Suwarê ciwanekî Manegî ye, Manegî dûgxigî ye.
Zînê zerê tewrizî ye,
Serkel û silahbend dirizî ye,
Cotekî danisqa pişta zînî çikilandî ye.
Ew bi xwe simbêl sor î sosinî ye,
Qelunbeskê osmanî ye,
Berdefka wî kehrebenî ye,
Û xencerê wî salihbegî ye.
Çef û egalê wî Mendelî ye,
Kurk û ebaya wî besrawî ye,
Şalê wî kermanî ye,
Bi çekmeya siftalî ye,
Bi tomamê rûmanî ye,
Hoçkêdê wî sê gazên gaza qeyserî ye,

Piştqûna Boz î beyaz î li erdê dikişî ye.
Pêr kaxezekê ji dotmama xwe hinarti bû:
«Par nefer bûm, û ev sala yûzbaşî me».
Başbazerganî filana dibêjit:
Erê Heftsedê,
Min Genc xelîl Axa, pismamê te ne ditiye bi vê çavana.
Ez nakim bikim çu bêbextî û çu derewana.
Lêwarê.....
Têto başbazerganî cuhiyana.
Heftsedê dibêjit:
Erê, tu bi xwedê û Mûsa pêxemberana,
Te pismamê min ê Genc xelîl Axa ne dîtiye li welatê di xeyran û xirbana
Li bajêra kola Mehmûdî Tilsîn û Milsîna, bajêrekî xerîbî ye?
Başbazerganî cuhiyana dibêjit:
Pismamê te Genc xelîl Axa nesaxekî nesaxan e.
Ser milê di du Romîan e,
Bir û avête xestexane.
Lê warê... Lê warê....
Heftsedê rabû, çil keç j' bo xwe kom kirin,
Hemî romanî xemilandin.
Û ew bi xwe kire diktorê Loqman.
Û qesta pismamê xwe kir
Deh nefer hinartin:
Bila hemî diktora derkevin,
Dê diktora Loqman têtin û Genc xelîl Axa sax bikin;
Hemî diktora derketin, û hatin diktorê Loqman,
Û nîşanit çawa xwe bi Genc xelîl Axa binit derê.
Dest avête strana:
Ava Firatê çemê bi kend û lend e.
Ezê hespê Genc xelîl Axa bibim ser solbenda;
Ezê guharê xwe bikim nala;
Û bazingê xwe hûr, hûr bikim û bizmara;
Ezê kezî xwe bikim tenga,
Û biskêd xwe bikim deshevsara.
Herçî gav pismamê min Genc xelîl Axa derkevit bi koçmal û çadirana
Û da xelk na bêjin:
«Eve suwara korê Heftsedê çi bê kar û bar e.»
Lê warê.....
Genc xelîl Axa çavê xwe vekir,
Got: «Ev strana te ji kî rê girtî ne?»
Diktorê Loqman dibêjit:
Ez çûme ser nesaxa ji nesaxa ewêt girtin.
Genc xelîl Axa gote diktorî:
«Heker tu va strana bo min bêjî,
Her stranan hespekî didime te.»
Dest avête strana.
Gote: Ew çil keçê digel libasê xwe bikin:
Oda başbazerganî odakî şîn e.
Kelek û gemiyê di Hacî Bedran Axa, têno dikişîne,
Dê hêlo pismamo Genc xelîl Axa destê xwe li gerdenê zer werîne.
Lê warê..
Heke çavê xwe vekir, û berê xwe dayî ko dît dotmama xwe Heftsedê,
di vê gavê de mir.
Lê warê.....
Ji bajêrî salî ne çime bajarê Misrî ye.
Ezê piştî pismamê xwe Genc xelîl Axa, ezê sing û berê xwe bikim li bin axê qebrê ye...
Ne ma yê, ne ma yê, ne ma yê.
Dê bila ez nemînim piştî pismamê xwe Genc xelîl Axa, li ser dinyayê!
Lê warê...
Ji vê odê ne çime çu oda.
Memkê min na bîne befrekê li zozana.
Û xwe kişa, îna li serbanê di vanî oda.
Ezê desmalekê şîn kirim, bavêjime çavê xwe,
Û ezê xwe avêjime avê, bila bikim bi rûh de......

*yê ko berhevkiriye: Th. bois*

## Rojnameya Ahen Dinivîse

*Rojnameya Ahen, ya ko bi zimanê farisî li Tehranê derdikeve, qala pirsa Kurdistana Îranê dike û dibêje: roj berî rojekê Hikûmeta Îranê, divê mixtariyeta kurdistana Îranê qebûl bike.*

*Miletê kurd ev çend sal in vî tiştî dixwaze; kurdên Îranê dixwazin ko zimanê kurdî di Kurdistana Îranê de, bibe zimanê resmî, zimanê hikûmet û mehkeman; hemî karker û mêmûrên axa Kurdistana Îranê ji kurdan bête bijartin û di hemî medresa û xwendegahan de zimanê kurdî bête xwendin û kurd karên welatê xwe bi destê xwe biyerînin. Rojnameya Ahen bi ser ve zêde dike û dinivîse: hikûmeta Îranê divê xwe bilezîne û heqê kurdan bide; beriya ko îş yekcar xira bibe. Li gora telegrafên dawîn qiwetên kurdî yên kurdistana Îranê û lekên Mela Mistefa Paşa hatine dora sine û kirmanşahê; û kurdên van erdan bi şabûnî xwe gihandine wan. Ji aliyê din ev nûçeyên serfiraziya kurdan gihane kurdên lor û bextiyar û ev jî pê zehf şa bûne û arîkariya xebata azahî û istiqlala Kurdistanê dikin.*

## Kovareke Nuh; Mad

*Di Tehranê de, Kovareke nû bi navê Mad dest bi derketinê kiriye. Ev kovar bi pirsên kurdî yên zanîn û zanistî, yên çand û komelî, dîrok û çîrokiyê mijûl dibe. Gerînendeyê wê Aka Azadpûr e. Niho di Tehranê de du kovarên kurdî yên farisîziman hene: Kûhistan û Mad. Ji van kovaran pê ve di kurdistana Îranê de zehf kovar û rojnameyên kurdî û kurdîziman derdikevin. Hêviya me ji Xwedê eve ko xebata brayên me kurdên Îranê tevî yên Tirkiye û Iraqê berxurdar be.*

## Cigareyên Tamdar



## ÇAPA KURDI

*Niho bi zimanê kurdî hevde kovar û rojanme derdikevin. Ji van pê ve, li Bêrûtê, her panzde roj carekê, bi zimanê frensizî rojnameyek derdikeve; navê wê « Le jour Nouvean » ye; çar rûpelên di wê ên mezin hene. Ev rojname qala çand û nivîsar û siyaseta Kurdistanê dike û doz û dehwa miletê Kurd, têxe pêşçavên cihanê. Ev in navên kovar û rojnameyan û welatên ko tê de têne çap kirin. Li Sovyetistanê: Riya Taze, Kovara Qefqasê.*

*Li Îranê: Peyam; Niştiman, Kûhistan, Zegros. Çiya, Tirûske, Yekîtiya Têgûşîn*

*Li Iraqê: Azadî, Jiyan, Gelawêj, Dengî - Kîtiyî - Taze.*

*Li Şamê: Hawar, Ronahî.*

*Li Bêrûtê: Stêr; Rojû Nû.*

## RADYO

Weşînekên heroje bi zimanê kurdî:

**Li Bêrûtê:**

Radyoa Bêrûtê; hero piştî nîro, li saet pênc û sih deqîqan de, li ser pêlên kurt û navîn bi zimanê kurdî nûçeyên Cihanê ên dawîn belav dike. Dirêjahiya pêlan: pêlên kurt 37 mêtir û 34 sentîmêtir, an 8.036 kilo sikil; pêlên navîn 411 mêtir, an 730 kilo sikil.

**Radyoa Kurdistanê:**

Li ser pêlên kurt diweşîne; dirêjahiya di wan; 42 û heta 44 û nîv mêtiran; berî nîro li saet 11 û 45 deqîqan de, dest pê dike; û nîv saet, dom dike.

**RadyOa Azirbîcanê:**

Hero piştî nîro der saet pêncan, li ser pêlên dirêj bi kurdî diweşîne. Pêlên dirêj: 1410 û heta 1415 mêtiran. Ji van pê ve hin radyoyên dinyayê stranên kurdî diweşînin; mîna yên Moskowa, Erîwan Paris û Londrê.

# PÊJINÊN DINYAYÊ



**Ji Bergehên Ewistiryayê: Insbruk**

Xelkên Ewistiryayê jî bi zimanê elemanî xeber didin; lê ew ne mîna rûniştimanên germanistanê şerxwaz û leşkerperest in. Di vî şerî de, der tenişta elemana bûn; lê Hevalbendan ew ne êşandine; bervajî bi dilekî rehimdar li wan nêrîne, arîkariya wan kirine; û ew ji nû ve gihane azabî û serbestiyê û ji xwe re hikûmetek danîne

3ème ANNEE — LUNDI 14 JANVIER 1946 — NUMÉRO 66

# LE JOUR NOUVEAU

QUOTIDIEN KURDE

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél. : 74-04 et 84-41

Directeur-Propriétaire : EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 25 P.L.S. - Abonnement :
Liban-Syrie 25 L.L.S. Etranger 4 L. Stgs

# OBJECTIVE

Comme nos lecteurs ont pu le remarquer, en ce qui concerne la question kurde, nous nous sommes toujours efforcés d'exposer dans « Roja Nû » les faits dans leur stricte objectivité. Afin d'éclairer les esprits, nous avons publié documents et points de vue qui permettent de se faire une idée juste de la question. Notre but et notre désir ont toujours été de favoriser l'équilibre des pays du Moyen Orient en exhortant les uns et les autres à comprendre leur situation réciproque, à chercher les terrains d'entente plutôt que les points de friction, bref à être des facteurs de progrès et non point des causes de trouble.

Fidèles à notre programme, ce sont des extraits de la presse iranienne que nous soumettons aujourd'hui à nos lecteurs. Les quelques réflexions qui suivent n'ont d'autre but que de les mieux situer.

Nous savons qu'à Paris, en 1928, par l'intermédiaire de l'Ambassade de Perse, et en 1929, une délégation Kurde fit une démarche près du Gouvernement iranien. Il s'agissait d'assurer aux Kurdes d'Iran une certaine autonomie culturelle. On demandait l'enseignement de la langue kurde dans les écoles et la nomination de fonctionnaires kurdes dans les districts hebités par les Kurdes, bref de donner aux Kurdes la possibilité d'évoluer et de renforcer ainsi l'Etat Iranien.

Ces revendications qui, on l'avouera, n'avaient rien que de très naturel et légitime, non seulement ne furent pas prises en considération, mais, bien au contraire, la noblesse kurde fut emmenée en résidence forcée à Téhéran, une partie même mise au cachot. Des intellectuels furent poursuivis. C'est ainsi que des médecins furent enlevés, par exemple de Kasr Chirin et emmenés à Kermanchah. Les persécutions allèrent si loin qu'un savant kurde, de notoriété mondiale, Saïd Khani Kurdistani, malgré son grand âge, fut jeté en prison et ne fut libéré que par l'intervention de l'Ambassade Américaine, grâce à une démarche personnelle de M. Roosevelt. (cf. Kuhistan, N° 29, 1945).

On sait aussi que jusqu'en 1941, date de l'entrée des troupes soviétiques et britanniques en Iran, il était absolument interdit aux Kurdes de publier quoi que ce soit en leur propre langue. Depuis lors, grâce à la liberté apportée par les Alliés, et malgré les difficultés financières de l'heure, les intellectuels kurdes purent fonder 7 périodiques dont certains, comme Nistiman, par exemple, ne comptent pas moins de quarante pages.

Quane on songe à l'importance de la presse pour un peuple, on ne s'étonnera pas du zèle des leaders kurdes en ce domaine, d'autant que le Kurde, malgré la réputation que certains voudraient lui faire, aime manier la plume aussi bien que le fusil, et s'il apprécie le courage guerrier ne méprise pas pour autant l'instruction, loin de là !

La lecture de ces articles de la presse iranienne, qui manifestent tant d'incompréhension encore, nous afflige, mais elle nous permet aussi de comprendre la réaction du peuple kurde. Cherchant remède à sa douleur, déçu de ne le point trouver auprès de celui qu'il sollicite et qui refuse de l'entendre, n'est-il pas naturel que le malade s'ingénie à se guérir par lui-même, quitte à secouer quelque peu les médecins endormis ?

* * *

S'il est des pays ou le Kurde ne peut s'instruire en sa propre langue ; s'il en est d'autres, où les mots mêmes de Kurde et de Kurdistan ont été systématiquement suprimés du vocabulaire, il nous est d'autant plus agréable de constater qu'une telle erreur psychologique et politique n'est pas universelle. — Lors de son voyage officiel en Djézireh, Son Excellence Choucri Kouatli, Président de la République Syrienne, après avoir entendu un discours arabe lui souhaitant la bienvenue, fit cette remarque : « N'entendrai-je pas aussi quelque discours en Kurde ? » Ce geste est allé droit au cœur de tous les Kurdes. C'est, d'ailleurs, ce qu'a exprimé aussitôt et bien éloquement, notre poète national *Cegerxwîn*, trop heureux de prendre au mot le Chef de l'Etat syrien.

## Résumé

*d'un article paru dans la Revue Iranienne : «AL SIBA» No 10, 3ème année (Octobre 1945)*

## L'INDEPENDANCE du KURDISTAN

Il y a longtemps que les Kurdes de la Perse songent à se libérer et à former un Kurdistan indépendant Ils accusent le Gouvernement Iranien d'être des agents fascites et d'avoir, durant des milliers d'années, traité les Kurdes en esclaves.

Le mouvement d'insurrection des Kurdes n'est pas un fait nouveau, il remonte à plus de quatre ans. C'est le Gouvernement Iranien qui, par précaution, a voulu jusqu'ici taire la nouvelle, par crainte de provoquer dans le pays des troubles et des désordres.

Le parti le plus en vue au Kurdistan est celui du « Koumlé » qui cherche par tous les moyens à soutenir la cause commune des Kurdes et à provoquer une insurrection générale pour obtenir au plus vite une indépendance complète. Ce mouvement de révolution est encouragé par une Puissance étrangère qui donne au Parti en question les directives à prendre en cas de besoin. C'est ce qui est arrivé lors des derniers événements : des troupes gouvernementales furent envoyées sur les lieux pour mâter l'insurrection ; les révolutionnaires ne les attaquèrent qu'après avis de la dite Puissance.

Ce mouvement de libération a réveillé chez les Kurdes d'Irak un sentiment pareil et les a poussés à prendre les armes contre le Gouvernement Irakien en lui opposant des forces armées bien équipées et bien organisées.

La Revue «AL-SIBA» possède des documents authentiques qui prouvent d'une façon bien claire que le Parti Révoluttiounaire «Koumlé» est résolu à aller jusqu'au bout pour la formation d'un Kurdistan Indépendant Socialiste. Le futur drapeau du Kurdistan garderait les trois couleurs avec le rouge en tête et au milieu le seul insigne du Soleil

Seraient-ce la faiblesse du Gouvernement, les querelles des Minoritée et des Majorités, ou les tendances et les désirs particuliers, qui empêchent Téhéran de réagir et de réprimer cette rébellion par des moyens diplomatiques, ou militaires, pour arriver à rétablir l'ordre et garder l'Unité du Pays ?...

## Extrait

*du Journal Iranien IRAN KÊNOUNI No 25226 du Octobre 1945*

## L'INSURRECTION KURDE

Nous avons publié il y quelques jours un Communiqué du Chef de l'Etat-Major de l'Armée du Schah des Schahs suivant lequel certains Kurdes de Mahabad se sont rendus en Russie sans être munis de passeports réguliers délivrés par les autorités iraniennes compétentes

Après un bref séjour en Russie, ces Kurdes sont rentrés en Iran à bord d'un autobus russe, à l'exception d'un seul qui s'est installé à Moscou.

Les personnes dont il s'agit appartiennent à une organisation Kurde constituée spécialement pour libérer le Kurdistan d'Iran.

D'après les nouvelles parvenues de nos correspondants à Mahabad l'administration de cette dernière ville et de tous les villages avoisinants est assurée actuellement par l'organisatiou kurde sus-nommée. Le Drapeau Rouge est hissé sur les bâtiments officiels et le portrait de Staline a remplacé, dans les services gouvernementaux, celui de l'Empereur d'Iran. Il faut donc admettre que Mohabad et les villages environnants sont déjà détachés de l'Iran et annexés à un pays étranger.

Le journal américain «News of the Hord» avait publié une nouvelle parvenue de son correspondant en Palestine, suivant laquelle un Cheikh des Kurdes d'Irak s'est révolté contre le Gouvernement et a fini par menacer le chemin de fer de Mossoul-Bagdad et les gisements de pétrole à Kirkouk. Le Chef de l'Armée gouvernementale, qui était un Général Anglais, écrit ce journal, avait conseillé au Gouvernement Irakien de ne pas réprimer l'insurrection dont il s'agit avant de connaître les intentions des Kurdes.

Maintenant il s'est révélé que les insurgés Kurdes d'Irak réclament la liberté et l'indépendance du Kurdistan. Ces désirs ont été exprimés à la Conférence de San Francisco par un Comité représentant les Kurdes établis en Amérique.

Il s'ensuit donc que les Kurdes aspirant à l'Indépendance politique et à la liberté nationale. Cependant ils présentent des points de vue différents concernant cette indé-

(suite en page 2)

# Tefsîra Quranê

84-Her çend jî ew gelek pîr bûn, me ji kerema xwe, ji Ibrahim re Isheq û Yaqûb da û me ew kirin pêxember û beriya wî, me pêxemberîtî da Sileyman, Eyûb, Yûsif, Mûsa û Harûn jî kirin pêxemberên xwe. Em bi vî awayî qencîkeran digihînin kerema xwe.

85-Zekeriya, Yehya, Îsa û Ilyas hemî ji yên dilpak û qencîkera ne.

86-Me Ismaîl, Yesa, Ilyas û Lût kirin pêxember û me ew ji mirovên din çêtir girtine.

87-Û me hin bav, law û hevalên di wan bijartine û ew kirine ser riya rastiyê.

88-Dînê islam, dînê Xwedê ye; û Xuda ji evdên xwe her kesê ko dixwaze digihîne riya misilmanîtiyê a rast; heke pêxemberên Xuda tişteki bikirana hevber û hempayê Xuda; qenciya ko kirine pûç û winda dibû; bi kêr ne dihat û wan dinya û axireta xwe xira dikirin.

89-Miletê ko-ango xelkên Qureyiş-me ji wan re kitêb û hikmet û pêxember daye; heke ew û çêliyên di wan kitêb, hikmet û pêxemberên di me, inkar dikin û pê kafir dibin; emê li şûna wan miletekî din, bêxin û ew milet qedrê qenciya me digirin û inkar na kin; û pê kafir na bin.

90-Bikeve pey pêxemberên ko Xuda ji wan re yekîtiya xwe da nas kirin; û ew kir ser riya rastiyê û ji xelkê re bêje: Ez ji we tiştek na xwazim; emrên Quranê û naskirina yekîtiya Xwedê şîreta mine; û ew ji bona qenciya we ye.

91-Heke hon dibêjin, Xuda ji tu kesî re kitêb û pêxemberîtî ne şiyandiye; jê xuya dibe ko hon qedrê Xwedê; herwekî divê mirov bigire, na girin. Bêje wan: ma ji Mûsa re kitêba ko ronahiya çavê mirovan e û riya rastiyê şanî xelkê dike; kê da dahatin? We ev kitêb li ser kaxezê nivîsandin û honhin rûpelên diwê, pêş xelkê dikin û piraniya rûpelên wê vedişêrin; her çend jî hon, di saya vê kitêbê de, hin tişt elimîne; ko ne we û ne jî bavê we, dizanî bû.

Bêje-Ev kitêb, ji kerema Xwedê ji Mûsa re dahatiye; û êdî berde, bila ew bi zimandirêjiya xwe bileyizin.

92-Pêxemberê min ... ev Qurana ko me ji te re, da dahatin, kitêbeke hêja û qîmetgiran e û kitêbên ko beriya wê hatine dahatin; tesdîq dike û me ji te re Quran nazil kiriye, da ko tu pê çavên xelkê Mekê û xelkên dora di wê vekî û tirsa Xwedê têxî dilê wan, û ew jî bi Quranê ji roja piştdawiyê bitirsinû tesdîqdarê Quran û Pêxemberê Xwedê bin, û nimêja xwe bikin.

93 Ji yên ko derew bi alî Xuda ve didin û dibêjin, Xwedê ez jin: tiştekî mîna Xuda da dahatin, ez jî dikarim bidim dahatin; ma ji wan zalimtir kî ne! Heke te bidîta; ko dema mirina wan xedaran hat û wan dest bi xiraxirê kir; û melyaket destên xwe dirêjî wan kirin û gotine wan rûhê xwe ji laşê xwe derînin; we derew bi alî Xwedê ve dida, we di heqê Xuda de, zimandirêjiyê dikir; bi ayetên di wî qail ne dibûn û emrên Xwedê diavêtin pişt guhê xwe, û pê nefismezinî dikir; îro hon dezayê vê kirinê, dê bikişînin, û bikevin ezabekî giran, û lezeta agirê dojêhê wê tam bikin; çawan li wan diqewimî.

94-Di roja piştdawiyê de, her wekî me hon cara pêşîn da xuliqandin; wilo, honê wê bêne hafa me; bê cil û xemil; û honê mal û zaroyê xwe di dinyayê de, wê bihêlin û pûtên we ko di heqê wan de we digot: ev hevber û hempayên Xwedê ne; ewê mehderiya me bikin, honê bibînin ko ew êdî nayin dîtin; honê ji wan veqetin û xewn û xiyalên we pûç û winda bibin.

95-Binêre.. ji kerema Xwedê lib û sîsik û deyndikê xurmê şîn dibin. Xwêdê ji tiştên mirî, weke havên û deyindikan, zaro û çîçik û dar, û ji tiştên sax; mîna havên, hêk û deyindik dide gihaştin; ev tiştên he hemî, bi emrê Xwedê çêdibin; ma çawan hon dikarin rûyê xwe jê ba din.

96-Binêre.. Spêde û rojhelat û şeva ko dema rahetî û razanê ye, û roj û heyva ko bi van xelk wextê xwe nas dikin; bi emrê Xwedê çêdibin; ev hemî tertîbên Xwedê ne, yê ko zana û ywedîqidret e.

97-Stêr jî, bi fermana Xwedê hatine afirandin ta ko hon li ser av û axê, û di tariyê de, bi roniya wan riya xwe peyda bikin; em ayetên xwe hûr, hûr şanî xelkê dikin, da ko mirovên bijîr bû bibin.

98 Xuda ye ko ji nefsekê, ji Adem hon da xuliqandin û di zikê diya we de, li erdê û di gorinê de, heta dema piştdawiyê cihek da we. Em ayetên xwe pêş xelkê dikin heta ko mirovên hijîr û dûrbîn seh bikin û pê bîrewer bibin.

99-Û Ew e ko ji ezmên avê dibarîne û pê libên giya û daran dibişkivîne û sinbilên têr dan û liv, û darên xurmê û gûşiyên wan ên fêkîdar û xwarser, û rezine têr mêv û tirî û bexçeyine dilruba yên hinar û zeytûnan dide gihaştin, darên ko weke hev û du xuya dikin lê fêkiyên her yekî bi tamekî dîger in; û gava ew çêdibin li wan binêrin çiqas xweş tamdar in. Ji bona mirovên bawermend di van tiştan de çi delîline rast û eşkere hene.

100-Lêbelê, hina cin û şeytan kirine hempayê Xwedê, her çend jî cin û şeytan jî; ji evd û mexlûqên Xuda ne, û hinên din jî gotine qey kur û keçên Xwedê hene û ji nezaniya xwe, bi vê gotinê; derew bi alî Xuda ve dane; Xwdê jorî van tişta ye; dûrî isnada wan e; navê Xwedê bilind e.

101-Xaliq û aferînendeyê erd û ezmanan ew e; ji kû kurekî wî hebe; ev bi xwe, bê jin û heval e; û her tiştên erd û ezmanan wî xuliqandiye û ew bi her tiştî dizane.

102-Ew Xudayê me û we ye, û ji wî pê ve tu Xuda nîne; ew, aferînende û avakerê her tiştî ye; ibadeta wî bikin; serdar û sermiyanê me ew e, ew e delîlê bêdelîlan, kesê bêkesan, hêviya bêhêviyan û çara bêçaran!

103-Çav nagehin Xwedê û ni karin wî bibînin; ew di dinyayê de, nayê dîtin; lê Ew, me dibîne; yê fêris û zana ew e.

104-Ji aliyê Xudanê we, delîl û hicet hatine we; da ko hon rastî û nerastiyê ji hev veqetînin; yê ko rastiyê dibîne û pê baweriya xwe tîne, qencê xwe ye; û yê ko pê bîr na be, û kor dimîne xirabê xwe ye; ez ne serdar û ne jî nobetdarê we me; sermiyanê we Xwedê ye.

105-Em, bi vî awayî ayetên xwe, şanî xelkê dikin; heta ko xelkê Mekê, me bêjin; Quran ne ji bal Xwedê ve ye, lê belê te ev pêk aniye; û em Quranê şanî xelkên dilpak û bîrewer dikin; da ko ew hinî wê bibin.

106-Bide pey Qurana ko Xudanê te ji te re wehî kiriye; ji wî pê ve tu Xuda nîne û dev ji mişrikan berde.

107-Heke Xwedê bixwesta, wan pûtên xwe ne dikirin hevber û hempayê Xwedê; me tu ne kiriye nobetdarê wan; û tu ne bergerê wan î.

108-Zimandirêjiya mirovê ko ji Xwedê pê ve, ibadeta tiştekî dikin, me kin; da ko ew jî, ji nezaniya xwe zimandirêjiya Xwedê ne kin; me ji her miletî re, emelê wî xemilandiye; lê bizanin ko di dawiyê de, honî hemî vegerin ba Xwedê û wê demê heke emelê wan çê an neçê bû; ji wan re, dê bête gotin.

109-Wan sund xwar û got: heke pêxember ji me re mûcizeyek anî, emê baweriya xwe pê bînin! Pêxemberê min, bêje wan: mûcize destê Xwedê de ne; û heke mûcize hat û wan baweriya xwe pê ne anîn; gelo ew bîr dibin, dawiya wan wê çawan çêbibe!

110-Emê çav û dilê wan, ji dîtina rastiyê bi şûnda bidin vegerandin; ji ber ko cara pêşîn mûcizeyên Xwedê dîtine û baweriya xwe pê ne anîne; em dikin wan serhişkiyê de, şaş û zendemayî bihêlin; bila li ser riya xwe a şaş sergerdan bin.

111-Heke me, ji wan re melyaketên ezmên bişiyanda xwar, û mirî bi wan re biaxftana û me her çi jî dilê wan dixwaze, di dora wan de kom, kom bicivanda, wan baweriya xwe pê ne dianîn; meger ko Xwedê bixwesta; çi feyde piraniya wan, nezan in.

112-Me, ji şeytanên cin û însanan yek kir neyarê her pêxemberekî; şeytanên cin û însanan, bi xeberine şîrîn û zêrîn; hev û du dixapînin; heke Xudanê te ev tişt ne xwesta; wan wilo ne dikir; ji ber vê yekê tu kar û hîlebaziya wan; ji me re berde; emê bi wan mijûl bibin.

113-Berde, bila dilê mirovên ko baweriya xwe bi roja piştdawiyê ne anîne, bi van gotinên pûç û zêrîn, şîrin be û li gora daxwaza xwe guhdariyê bikin û tiştê ko dikin kar bikin; têxin destê xwe.

114-Pêxemberê min, bêje.... ma ji min re ji Xwedê pêve hakim ji bo çi? Wî ji we re Quran rêkiriye; ya ko rastî û nerastiyê ji hev veqetîne; û şanî we dike; yên ko me ji wan re kitêb daye; cuhî û file xweş dizanin ko Xudanê te; ji te re Quran nazil kiriye û hikmên di wê pak û rast in; me be, ji mirovên xwedîşik.

115-Gotina Xwedê li ser yekîtî û pêxemberîtiyê, timam bûye; kes ni kare gotina wî biguhêre; Xwedê bihistiyar û zana ye.

116-Heke te bidaya pey xelkên Mekê û dinyayê, piraniya wan, tu ji riya Xwedê deraniyana; ji ber ko wan rastî li kû ye û çi ye seh ne kirine; ew ketine riya kal û kalikên xwe ên xwar; li gora wehm û xiyalên xwe dimeşin û binêre; radibin derew bi alî Xwedê ve jî didin.

117-Binêre... Xudanê te dizane; kê riya xwe şaş kiriye û kî li ser riya rastiyê ye.

118-Goştê heywanên ko bi anîna navê Xwedê hatine şerjêkirin bixwin; heke we, baweriya xwe bi ayetên di wî anîne.

119-Ma, çi li we qewimiye; çire hon goştê heywanên ko bi anîna navê Xwedê, hatiye şerjêkirin, na xwin, goştê ko xwarina wan hatine heram kirin, me şanî we daye; divê hon ji goştên heramkirî ne xwin; meger ko di tengiyê de, ji neçariyê jê bixwin; lê binêrin; zehf in yên ko ji hewes û nezaniya xwe tiştên heram dikin helal, û pê we şaş dikin; binêre; Xudanê te mirovên ko derbazî sînorên rastiyê dibin nas dike.

120-Dest û dilê xwe ji gunehên dizî û eşkere bikişînin; yên ko gunehan dikin li gora giraniya gunehên xwe, dê bêne êşandin.

121-Û goştê heywanên ko ne bi anîna navê Xwedê hatiye şerjêkirin me xwin; xwarina wî ji we re ne qenc e, hon pê gunehkar dibin; lêbelê Şeytên nav di hevalên xwe didin da ko ew, ji we re bêjin, ma çawan dibe ko hon goştê heywanên ko we bi destê xwe şerjêkiriye dixwin; û ji yên ko ji aliyê Xwedê ve hatine kuştin na xwin; û pê berberiya we bikin; lê bizanin ko heke we bi ya wan kir; hon jî, ji mişrikan dibin.

122-Ma yê ko ji kufrê weke miriyek bû û me ew bi baweriyê vejandiye û jê re roniya rastiyê daye; da ko di nav xelkê de bigere, û rastî û nerastiyê ji hev dûr ve bike; dibe mîna kesê ko di tariyê de ye; û jê nikare derkeve; me bawermendan bi îmanê bîrewer kiriye û du xelkê kafiran jî ko ew nefsa xwe pê dixapînin; ji wan re xemilandiye.

# Li Cezîrê

**Nûçegihayê me dinivîse**

— Ji bona xelaskirina xelkê, ji derdê nezaniyê; bi himeta Mihafizê xeyretmend, bi şev ji xelkê re ders wê bête dayîn. Karekî hêja û bi qîmet e.

— Ji bona berberiya kuliyan, ji Şamê karker û derman hatiye rêkirin axa Cizîrê û karker dest bi xebatê kirine.

— Ji bona lihevanîna hin eşîrên ko par pevçûbûn himetine mezin hatine kirin; hêviya me eve ko êdî rayê teşxelan ji erdê Cezîrê hatiye rakirin; di vî tiştî de jî, para Ebdilqadir Beg Meydanî mezin e; berxurdarî û serfiraziya wî dixwazin.

— Baranine xweş bariyane, pê rûyê xelkê keniya ye; hêvî mezin e ko bi kerema Xwedê ev sal, dê bibe sala boşahî û qenchatinê.

— Ji xelkê Cizîrê re birinc û qimaş tête belav kirin; bitenê parkirina şekir, hinik bi şûnda hatiye hiştin.

— Riyên Cezîrê zehf xerab in; daxwaza me ji hikûmetê ye; vî tiştî jî bi destê xwe ê ciwan û himetdar bigire.

— Xalib Beg Cezmanî bûye midîrê nahiya Derbasiyeyê; Xwedê wî serfiraz bike.

— Li Hesîçê Şitilxaneyeke nû, hatiye çêkirin ji darên zînet û fêkiyê û bi hezaran darine hêja hatine belav kirin xelkê. Karekî gelek çak e; himeteke hêja ye.

— Bajêrgêriya Heseçê û Kamişlokê, bi destûra hikûmetê sêsed hezar lîre qerd bikin; ji bona karên elektrîkê û anîna av û avakirina co û cogelan; hêvîya me ji hikûmetê ye, di vî tiştî de jî, hêla bibe arîkarê me.

— Du Miftiyên nû dê bêne rêkirin Cezîrê; yek ji bona Kamişlokê û ê din ji bona Dêrikê.

— Li Hesekê Mehkemeke Istînafê bê bête dayîn; bi vî awayî xelkê Cezîrê, di zehf dehwan de, êdî ji çûn û hatinên zehmetdar xelas bibin; tiştekî çak û bikêrhatî ye.

— Di Cezîr de, qanûn, bêterefî heq û beramberî hikimran e; idareke demoqrasî a rastîn payedar e; tevkariya milet û hikûmet her û her çêtir û bêtir dibe; ji xwe, xweşiya welêt, bi vî awayî çêdibe.

---

**Strana Kurdî:**

## DILO!

Eman! Eman! dilo!
Ezê herim eve mirada şewitî.
Ya dê! xweş mirada, ji kula dilê min re zêdaya qerar na da.
Heyfa min di tê wê.
Heyfê xortekî çardeh salî ketî bendê jinekî pîsî çepel:
Na têt kuştin û na têt ber da,
Dilo! malîlo! dilo!
Eman! eman! emanî.... Dilo! malîlo! dilo!...
Ezê herim eve mirada şewitî li ber kelekê:
Û ezê kul û gazindê xwe bikim ji dewrê, ji çarkê, ji felekê.
Heyfa min tê wê.
Heyfê xortekî çardeh salî ketî bendê jineka pîsî çepel.
Min wê înayî û digel wî ne kir.
Eman! dilo!....
Eman! eman! emanî.... Dilo! malîno! dilo!....
Ew Mêrdîna şewitî, xweş Mêrdîn e.
Li ser da qesrên û li ber da sûkan û qeyserîne
Herçî xeberekî nav beyna min û delêlî malê bixebitît.
Hêviya min ji Xwedê: xêr bikit û xêr na bînit.
Dilo! malîno! dilo!
Ez bi kul im, û tu bi derd î.
Eman! eman! eman!....
Ezê herim eve mirada şewitî li ber kelekê.
Û ez kul û gazindê bikim ji dewranê, ji çarkê, ji felekê.
Heyfa min tê wê.
Heyfê xortekî çardeh salî ketiye bendê jinekî pîsî çepel,
Mînayê ketî girî girînekê.
Dilo! malîno! dilo!
Eman! eman! eman!
Ezê çûme mirada şewitî, xweş mirada.
xabûra şewitiyo, zêdaya qerar na da.
Heyfa min tê wê.
Heyfê xortekî çardeh salî ketiye bendê jinekî pîsî çepel
Na tê kuştin, na tê hiştin û na tê berdan.
Dilo! malîno! dilo!

---

## MEYRAMOK

*Lerzîneki ketî erdana,*
*Gurmîneki ketî ezmana.*
*Hindek dibêjin: «Dengê top û topxana»;*
*Hindek dibêjin: «Goragora dewrana»;*
*Û hindek dibêjin: Dengê top û topxana di Brahîm Paşa ne,*
*Li sera Amediyê dikolana.*
*Ne dengê top û topxana;*
*Û ne dengê gorgora dewrana;*
*Qîrînek ketî bû singê Meyramoka ciwane,*
*Û hêdî hêdî meşiye bû ser dare lidikane:*
*Hey li min; hey felek;*
*Meyramoka ciwane dibêjit:*
*Gazî bikin: Hoste Hana bête li dikanê;*
*Herê, hoste Hana, bo min çêke xizêmekî zêrî.*
*U ne bigirî bi kulbitanê,*
*U ne danî ser serdanê,*
*U ne lêdî çakuçanê:*
*Ji kudreta Xwedê avêjiye hergamanê.*
*Hoste Hana dibêjit:*
*Ezê bo te çêkim xizmekî zêrî.*
*U ne bigirim bi kulbitanê,*
*U ne danîm ser serdanê,*
*Û ne lêdim çakûçanê,*
*Û ji kudreta Xwedê bavêjime hergamanê,*
*Heko tu bo min bidî colekî ramûsanê.*
*Meyramoka ciwana dibêjit:*
*Colê di ramûsana min erzan e û ne bibeha ne:*
*Bi heft keriyê mehan e,*
*Û heft karî çûran e,*
*Û heft mulkan e,*
*Û heft êşan e,*
*Û heft dehşikê keran e,*
*Û heft kod şîrê teyran e:*
*Belaş e û erzan e.*
*Û avêtiya gohor babê xwe dana..*
*Hey li min!*

---

# HEYLA MINÊ

Heyla minê! lê, lê.... Heyla minê....
Qesrê Rezgara şewitî dê bêmo wa bi bera.
Tato dibêjit: Tamo, bra ciwaniya rîşanê ji extexanê bikêşe dere.
Min wê zanî: xwezûrê min ne sax e; da bistekê biçine sere.
Heyla minê! hey ne ma yê.
Kazî kurê Halîma yê.
Por bihano ne çima yê.
Piştî axayêd giran, em ne mînin ser dinyayê.
Heyla minê!....
Qesrê Rezgara şewitî bi libina.
Halîma dibêjit: Tato, lawo, ne çe mala babê min e.
Eve heft sala, û eve yê heştê ye.
Dermana bab û bra li ber pişta min e.
Tato dibêjit: Tamo, bra, şerê me û Suta bidizî ne bit, eşkere bit.
Ji Oramarê hate mil Geverê, xema min e.
Heyla minê!.....
Kazî kurê Halîmayê.
Por bihano ne çimayê.
Piştî axayêd giran, em ne mînin ser dinyayê!
Heyla minê! Hey ne ma yê!
Qesrê Rezgara şewitî bi pencera.
Xilamê di Suto dibêjit:
Emê darê di van pîra zûzanayê li kuleka bîbine dere.
Suto dibêjit: Gelî xilama û xizmetkera:
Şerê rojê ji min ne êt;
Şerê nîvana şevê: Axayê giran bigirin û deynin ber devê divan xencera
Heyla minê! Hey ne ma yê.
Kazî kurê Halîmayê.
Por bihano ne çî ma yê.
Piştî axayêd giran, em nemînin ser dinyayê!
Heyla minê! Hey ne ma yê!..
Çi şev şevê, stêr li ezmana digirin mij e,
Çiyakê di Rezgara şewitî bi kev û mij in.
Kî dîtiye bi dor û heft zemana axayekî wekî Tato li mala Sutû bi mêvanî de bikujin?
Heyla minê!... Hey ne ma yê!
Kazî kurê Halîma yê.
Por bihano na çima yê.
Piştî axayêd giran, em ne mînin ser dinyayê!
Heyla minê!... Hey ne ma yê!....
Qesrê Rezgara şewitî, dibêjim di korê de.
Roj derketo, şewqê lê da.
Kî dîtiye bi dor û heft zemana xwezûr xizmî bikujit li ber xewê de ?
Halîma dibêjit:
Bi serê kekê di xwe kim, xencera cewherlî tilî lê da.
Heyla minê!... Hey ne ma yê!
Kazî kurê Halîmayê.
Por bihano ne çima yê.
Piştî axayêd giran, em ne mînin ser dinyayê!...

---

## RADYO

Weşînekên heroje bi zimanê kurdî:

**Li Bêrûtê:**

Radyoa Bêrûtê; hero piştî nîro, li saet pênc û sih deqîqan de, li ser pêlên kurt û navîn bi zimanê kurdî nûçeyên Cihanê ên dawîn belav dike. Dirêjahiya pêlan: pêlên kurt 37 mêtir û 34 sentîmêtir, an 8.036 kilo sikil; pêlên navîn 411 mêtir, an 730 kilo sikil.

**Radyoa Kurdistanê;**

Li ser pêlên kurt diweşîne; dirêjahiya di wan; 42 û heta 44 û nîv mêtiran; berî nîro li saet 11 û 45 deqîqan de, dest pê dike; û nîv saet, dom dike.

**Radyoa Azirbîcanê;**

Hero piştî nîro der saet pêncan, li ser pêlên dirêj bi kurdî diweşîne. Pêlên dirêj: 1410 û heta 1415 mêtiran. Ji van pê ve hin radyoyên dinyayê stranên kurdî diweşînin; mîna yên Moskowa, Erîwan Paris û Londrê.

**Li Bexdayê:**

Hero piştî nîro di saet çaran de, destpê û heta pêncan dom di ke. Dirêjahiya pêlan: 42 mêtir û 37 sentîmêtir; pêlên kurt.

---

## Cigareyên Tamdar

Cigreyên çêtir û tamdar, yên Rejiya Libnan û Sûriyeyê ne. Jokey-Klub, Yekemîn, Befra, Tatlî-Sert, Vircinya, Oriyen, Zodiyak; ev cigareyên he hemî, ji tûtinên çêtir û paktir têne çêkirin. Piştî xwarinê cigareke baş, rihê cigervexwaran vedike.

Gava dixwazin cigarekê vexwin, navên Jokey Klub, Yekemîn-Birincî, Befra, Tatlî-Sert, Vircinya, Oriyen, Zodiyak bînin bîra xwe û yek ji wan paketan, jixwe re bibijêrin.

---

# PÊJINÊN DINYAYÊ



Mezelek, saloneke dilrûba ji ya wapora Normandî.

**Mala Me ji Malan û wê de**

Mala me ji malan û wê da;
Keçikê kulmekî li kurî da.
Kurik dibêjit:
Keçikê dînê, te gava ew kulm li min da,
Min zanî stêra min li ezmana reşiya.
Û belgê min ji darê cenetê weriya,
Û emrê min sed û pencî sala li dinyayê leq ma.
Mala me ji malan û wê da;
Keçikê kulmekî li kurî da.
Dibit: Kuriko dîno, were li vî de!
Kurik dibêjit:
Keçikê dînê, te gava ew kulm li min da,
Min zanî stêra min li ezmana na reşiya,
Û belgê min ji darê cenetê ne weriya,
Û emrê min sed û pencî sala li dinyayê zêda ma ye.
Qirika xezalê min î, qirika vê qazê.
Darekî li cenetê sîn bûyî, dibêjin darê vê miradê.
Dê hêlo, kuriko dîno, mi birevîne û bibe ser çiyakê Qereçdaxê.
Qirika xezala min î, qirika vê betê.
Tu bi kirasê kitan î, û kirasê mebrûm î.
Wey la mal mîratê!
Çi li ber bejnika te tê?
Şev û nîvanê şevê, kurek xwe avête ser sîng û bedenê di gewrê,
Heta roj derketo ji kenarî qibletê.
De wî ve, wî ve, tu bitêşî bi kelî ve.
Kolî bi zendê spî ve,
Zendê spî ve, bi bazinî zîv e,
Bi tiliya şimşalî ve,
Bi hingustîra di zêrî ve,
Bi qalş û mirarî ve,
Wê diketine ser madena dilî ve:
Min wê gerdenê singa dosta xwe ji nîveka şevê û pê de pîve.
Derketo gaz û nîv e.
De rabe, rabe, xezala dilê min, rabe!

# BÊRIVANÊ

*Bêrîvanê, bêrîyê di gundê me çil û çar û çarde ne:*
*Li mehalê jêrî sê qipla ne:*
*Qipla birekê, hemî keç in malbatî ne, bê lome ne;*
*U qipla navê, bûkê di salê ne, û di bêgazinda ne;*
*U qipla dumahîkê, hemî keçê di das bijarî dinav beyna min te ne.*
*Bêrîvanê, spêde ye, xweş tê dengê mihêkar tê:*
*Heko tu bêrîvanê min nas ne kî,*
*Wê li nav çil û çardeh bêrîye,*
*Şala li serê sor û zer tê.*
*Bêrîvanê, pezê mala babê bêrîvanê pezê spî ye.*
*Şivana dê bêjite: «Bêriya, were, dê bihnekî bikin yarîyan û laqerdiyê».*
*Eger ez biçim mal, bab û brakê di min bêjin: «Eve çî ye»?*
*Bêje: «Lepkê di parzonê min qetîya bû, û eyar sîrka min reştîye.»*
*Bêrîvanê, barekî titinê hatîye gundê me, titine zer e.*
*Xelk û alem kirîn bi ronî mihan.*
*Ez dê bo lawikê xwe kirîm bi drav û zêrê zer e;*
*U heko lawikê min qaîl ne bit,*
*Ez dê colê zermemka danîm li ser e.*

# ÇAPA KURDÎ

*Niho bi zimanê kurdî hevde kovar û rojanme derdikevin. Ji van pê ve, li Bêrûtê, her panzde roj carekê, bi zimanê frensizî rojnameyek derdikeve; navêwê « Le jour Nouveau » ye; çar rûpelên di wê ên mezin hene. Ev rojname qala çand û nivîsar û siyaseta Kurdistanê dike û doz û dehwa miletê Kurd, têxe pêşçavên cihanê. Ev in navên kovar û rojnameyan û welatên ko tê de têne çap kirin. Li Sovyetistanê: Riya Taze, Kovara Qefqasê.*

*Li Îranê: Peyam; Niştiman, Kûhistan, Zegros. Çiya, Tirûske, Yekîtiya Têgûşîn*

*Li Iraqê: Azadî, Jiyan, Gelawêj, Dengî - Ktîiyî - Taze.*

*Li Şamê: Hawar, Ronahî.*

*Li Bêrûtê: Stêr; Rojû Nû.*

# Werin Libnanê

Havîn nîzing dibe; Libnan mîna perçeyek ji Buhuştê ye. Daristanên Libnanê; mêrg û bexçeyên di wê; çiyayên Libnanê ên firehfeza û têr rez û bîstan; tirî û fêkiyên Libnanê ecêb xweş û spehî ne. Werin dîtina Libnanê; mêvanxaneyên Libnanê paqij û zerîf in; xelkê Libnanê nazik û mêvanhewîn in; ji hindikahiyê ve di Libnanê de sih otêlên mezin hene.



Şêndarî û şarmendiya Asyayê kevin û mezin e; avahiyên ko berî bi hezar salan li Misrê, li Libnanê, li Sûriyeyê; li Iraqê, li Çîn û Hindî Çîniyê hatine çêkirin zehf spehî û dilriba ne. Eve dergehdariya çeleng ji yên erdê Hindî Çîniyê.



Welatên pêşveketî; welatên aza û serbest bi burc û qesir, bi avahiyine çeleng û dilruba xemilandîne. Servejoriya mirovan bi zanîn, xebat, xwendegah, zaniste û zaningehan çêdibin. avahiyên jorîn cirayê xebat û xeyretê, denge zanîn ûpêşdehatinê ne.



Gemiyên gewre; her yek ji van çêl, pêncî şêst, heftî û heta heştî hezar ton mezin şanî me didin; insan bi himeta xebata xwe, digehe çi armancên hêja. Di destpêka dinyayê de, insan li depên darên birî ko dihatin avêtin çem û robaran siwar dibûn û pê diçûn û dihatin; di pişt re ji xwe re qayiqên biçûk çêkirin; hin bi hin pêş ve çûne û bînî kelekvaniyê bûne; lê niho ji xwe re gemiyên mezin, mîna qesr û serayên bilind têr mezel û dîwanxane; û enbar çêdikin. Eve waporeke gewre, heştî hezar ton mezin; navê wê Normandî ye.

Sal — 4 Hejmar — 72

Duşemb. 13 Gulan 1946

Kiriyariya Roja Nû: ji bona erdên Sûriye û Libnanê, 35 lîreyên Sûrî; ji bona welatên din 4 lîreyên inglîzî. Bihayê Hejmarekê: 25 Qemerî.

# ROJA NÛ

Dîwan û gerînendekariya Rojnamê: Bêrût-Birc: Weqif Tabet, Telefona Dîwanê: 74 04; Telefona Mala Xwediyê Roja Nû: 84-41, Edresatelg:Bêrût-Rojanû.

XWEDÎ Û GERÎNENDE: MÎR Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIRXAN

# Tefsîra Quranê

123-Her wekî di Mekê de, di gundên din de jî, me gunehkarên mezin, jorê xelkê kir, da ko ew bi qesda deranîna xelkê ji dîn û diyanetê hîlebaziyê bikin; lê belê ew, bi tenê hîlebaziya nefsa xwe dikin; xwe dixapînin, û pê na hesin.

124-Û gava ayetek da tê; ew dibêjin, heta ko Xwedê ji me re jî, mîna bi pêxemberê xwe dike; ayetek wehî ne kir, em baweriya xwe pê na yênin; Xwedê, xweş dizane; ayet û wehiya xwe ji kê re dide, her wekî ew fitne û hîlebaziyê dikin; Xwedê wan vê dinê de perîşan û şerpeze bike; û wa dinê de jî, bi ezabekî giran dê biêşîne.

125-Xwedê dil û hişê mirovên ko dixwaze bigihîne riya raştiyê vedike û çav û bihna peyayên ko dixwaze şaş bike, digire û teng dike; û gava ji wan re tête gotin baweriya xwe bînin; mîna mirovên ko jê re hatiye gotin, hilkişe ezmên; bihna van diçike; Xwedê bi vî awayî peyayên ko baweriya xwe ne anîne, diêşîne.

126-Ev e, riya Xudanê tea rast; me ayetên xwe bi tefsîl, şanî xelkên eqilmend kirine ta ko ew pê bîr bibin.

127-Ji bona wan, li ba Xwedê mala buhuştê heye û Xuda delîl û sermiyanê kar û emelê wan e.

128-Roja ko, Xwedê cin û mirovan wê bicivîne, ji cin û şeytanan re dê bibêje: we xelk xapandine û xistine destê xwe; wê çaxê; ji insanan yên ko bûbûn hevalê şeytanan wê bibêjin: Xudanê me, em bikêrî hev û du dihatin; lêbelê niho em gihane dema ko, te li ba xwe danî bû; Xwedê li wan dê vegerîne û bêje: ne xwe, mala we dojeh e hon tim û daim tê de, wê bimînin; her hal li gora daxwaza xwe wê çêbike. Binêre... yê fêris û zana Xudanê te ye.

129-Û wilo, em ji ber emelên wan ên xerab, hin zaliman dikin belayê serê hin zalimên din.

130-Gelî komên cin û mirovan... ma me ji we re, ji we - ji nav we - pêxember ne şiyandine; ma wan ayetên me pêş we ne dane; û we bi hatina wê, roja we a piştdawiyê agahdar ne kirine... Ewê bêjin: em di heqê nefsa xwe de şehdetiyê didin; me serhişkî kiriye. Belê, jiyîna dinyayê ew xapandin û wan di heqê nefsa xwe de şehdetî dan û gotin: ko ew ji kafiran bûn.

131-Ji ber ko Xwedê ne dixwest, beriya ko pêxember rastiyê pêş xelkê bikin, bajarê peyayên nezan û çavgirtî xira bike;

132-Û li gora emelê wan ji bona her yekî ji wan cih û mertebeyek heye; Xudanê te ji kirina wan ne bê hay û xeber e.

133-Û yê dewlemend û dilovan Xudanê te ye, û ko wî xwest sefê we diçe û li gora daxwaza xwe, ew sefekî din tîne dewsa we, herwekî wî, hon ji çêliyên sefekî din da gihaştin.

134- Roja piştdawiyê, her wekî hatiye gotin; bi ser we de, wê bê û hon ni karin wê bisekinînin. an bidin bi şûnda vegerandin.

135-Bêje, nijadê min, ko we dil kir, li gora daxwaza xwe bimeşin; lê belê ez, li gora emrê ko ji min re hatiye dayîn gavê xwe davêjin; honê di dawiyê de, xeleta xwe seh bikin; honê bibînin, di mala axiretê de, li buhiştê qedrê kê wê bête girtin. Zalim tu caran na gehin felatê.

136-Ew (mişrik) ji zad û terş û dewarên xwe, behrek hiltînin û dibêjin ev para Xwedê ye û behreke din hiltînin û dibêjin ev ya pûtên me ye, û para Xwedê didin rêwingî û belengazan û ya pûtan; didin xidmetkarên pûtxaneyan; û heke para ko ji bona Xwedê hiltînin têrî hewcedariyê na ke, ji para pûtan tiştek hilnayênin; lê heke para pûtan têrî hewcedariyê ne bû; ji para Xwedê distînin û dibêjin; Xwedê dewlemend e; ne muhtacî van tişta ye; qerarên wan wilo kirêt û bêkêr bû.

137-Dîsa, bi vî awayî şeytan û xidmetkarên pûtan ew xapandin, û wan ji tirsa tûnebûn û belengaziyê û bi xeyreta nezamiyê, zaroyên xwe kuştin; ji ber ko şeytên û xidmetkarên pûtan, qelandin û edimandina wan dixwestin; heke Xwedê dil bikira, wan ev tişt ne dikirin; ji ber vê yekê, dev ji wan berde; bila li gora eqlê xwe bimeşin.

138-Mişrikan li gora eqlê xwe digot: ev zad û terş û dewarên ko para pûtên me ne, ji me re heram e û ew bitenê ji bona xidmetkarên pûtxana ne; û li van heywana siwar bûne jî; ji me re heram e û di şerjêkirina hin heywanan de, navê Xwedê na yênin; ew, bi van tiştan derewan dikin û derew bi alî Xwedê ve didin; ji ber vê yekê, Xwedê wan dê biêşîne;

139-Û wan got: heke sexelê van dewaran (Behîre û Saibe) sax dizê ji me re helal, lê ji jinên me re, heram e; û heke berê wan mirî dizên, tê para jin û mêran hene, tev de jê dixwin; ew pê derewan dikin, û cezayê xwe dê bibînin; Xuda fêris û zana ye.

140-Yên ko ji nezanî û ehmeqiya xwe keçên xwe kuştine, û tiştên ko Xwedê helal kiri bû; ji xwe re kirine heram, dîn û dinya xwe xira kirine, û ketine rêke xwar; û ne gihane rastiyê.

141-Xwedê ye ko rez û bîstanên têr mêw û lem û dar, û darên xurmê û zadên erdê yên ko tama wan bi çend texlîta ne, û zeytûn û hinarên ko mîna hev û du xuyanî dikin; lê lezetên wan ji hev dûr in, dan gihaştin; gava ew ber û fêkiyên xwe didin; jê bixwin û dema paleyî û çinîna wan de, zekatê wan bidin; lê belê ziakeriyê me kin; ji ber ko Xwedê, ji ziakeran, hez na ke.

142-Û ji dewaran, (hêştiran) hin hene ko barhildigirin; hin têne şerjêkirin û ji mûyên hînan ber û ferşên rayexistinê, têne çêkirin; ji tiştên ko Xwedê rizqê we kiriye, bixwin û mekevin şopa şeytên û bizanin ko ew dijminê we ê eşkere ye.

143-Terş û dewar heşt cot û heşt celeb in; ji pezê spî cotek; mî û beran; ji pezê reş cotek; bizin û nêrî; Bêje: ma Xwedê mî û bizin; an beran û nêrî heram kiriye? an goştên berê di wan; yên hêj di zikê diya xwe de ne! Heke hon mirovên dilpak in, ka ji min re li ser heramkirina wan emrekî şanî min bidin.

144-Xwedê cotek deve, nêr û mê û cotek dewarê reş, ga û çêlek da afirandin; Bêje: Xuda goştê nêr an meyên wan heram kiriye; an goştê berê di wan, yên ko hêj di zikê diya xwe de ne; ma gelo gava Xwedê xwarina goştê wan heram dikir hon lê bûn? Ma ji kesê ko derew bi alî Xuda ve dide û dixwaze pê nezanan şaş bike, jê zalimtir ki ye; Xwedê zaliman na gihîne riya rastiyê.

145-Pêxemberê min, bêje: ez di emr û wehyên Xwedê de, dibînim ko bitenê goştên heywanên mirî, xwîna heywanên şerjêkirî ya ko rijiya ye, û goştê beraza, yên ko mirdar in, û goştê heywanên ko ne bi anîna navê Xwedê; lê bi anîna navekî din, hatine şerjêkirin, yên ko fisq in, heram e; înca, kesê ko bê dilxwziyê, lêbelê ji hewcebûn û neçariyê, hinik jê xwar, bila bizane ko Xwedê dilrehm e, di gunehên bêçareyan dibore.

146-Me ji cuhiyan re goştê heywanên yeksim, mîna hesp, qantir û ker û bezê pez û dewarê reş heram kiriye, ji duhnê ko bi rûvî, hestî û goştê piştî wan ve zeliqiye; pê ve; me bi vî awayî cezayê serhişkiya wan daye; û binêre, em qedrê gotina xwe digirin.

147-Heke wan, derew bi alî te ve dan; bêje: Xudanê we dilnerm û keremkar e û qenciya wî mezin e; lêbelê qewmên zalim bi destûra wî, dê bêne êşandin.

148-Bêşik, mişrik wê bibêjin: Xwedê bixwesta; me û bavê me; pûtên xwe ne dikirin hevberê di wî, û me ne digot filan û filan tişt ji me re heram e; lêbelê her wekî ew niho te li derewan diqelibînin; beriya te jî, derew bi alî pêxemberên Xwedê ve da bûn; û ji ber vê yekê lezeta ezabê me, tam kirin; Bêje wan: heke destê we de kitêb an hicetek heye, de şanî me bikin; ne xwe, destê wan de, tiştek nîne; we daye pey xiyalekê; û hon hema derewan dikin.

149 Bêje: Kitêb û hicetên ko dil pê qail dibe, li ba Xwedê ne; heke wîy bixwesta, wiyê hon bigihanda riya rastiyê.

150-Bêje: de şahidên xwe bînin da ko şehdetiyê bidin û bêjin ko Xwedê ew tişt heram kirine. Pêxemberê min; heke ji wan hin rabûn û ji derewan şehdetiyê dan, tu me be tesdîqdarê wan; me de pey mirovên ko li gora dilxwaza xwe dikin; derew bi alî ayetên me ve dane û baweriya xwe bi axiretê na yênin, û Xwedê û pûtên xwe weke hev digirin.

151-Bêje: werin, ezê ji we re tiştên ko Xuda heram kiriye bidim zanîn; tu tiştî me kin hevber û hempayê di wî; qedrê dê û bavê xwe bigirin, û qenciyê bigihînin wan; û ji ber belengazî û tunebûnê zaroyên xwe me kujin; emê rizqê we û wan bidin; ne bi dizîka û ne jî bi awakî eşkere zinayê me kin; xelkê me kujin, ev tiştekî heram e; meger ko sebebek hebe; mîna di cihadê de, ev in emrên Xwedê heye ko hon têdigehin û pê bîrewer dibin.

152-Malê sêwiyan me xwin; malê wan têkilî malê xwe me kin; meger ko ev tişt ji bona parastina mala sêwiyan çêdibe û heta dema mezinbûna wan; vê gavê vî tiştî li gora heq û edaletê çêkin, û pê armanca we divê qencî û silametiya mala sêwiyan be; di dan û standinê de, mid, kîl û şihîna xwe rast bipîvin û bikêşin; em barê tu kesî ji taqeta wî bêtir na kin; di hikm û şehdetiyê de, di heqên mirovên di we de jî, li gora edaletê hikim bikin; li ber Xwedê û mirovan; li ser gotina xwe bimînin; qerara xwe me şkînînin; ev emrên Xwedê ne; dil û çavê xwe vekin û pê bîr bibin.

153-Û ev e, riya min a rast; bikevin ser riya min a rast; me kevin ser şopên din; ta ko hon ji riya Xwedê, ji riya rastiyê dûr me çin; Xwedê emrên xwe şanî we daye, heta ko hon jê tirsiyar bibin û riya xwe şaş ne kin.

154-Berê jî, me hikmên xwe şanî xelkê da bû; me kitêb da Mûsa; ya ko bi timamî arîkariya qencîkeran dikir, û şanî her tiştên dîn û dinyayê dida; wê kitêbê riya rastiyê û rehma Xwedê

pêş lawên Israîl dikir; ta ko ew pê baweriya xwe bi roja piştdawiyê û bi vegera xwe ba Xwedê bînin.

155-Û ev Qurana ko me da dahatin kitêbeke hêjaû giranqîmet e; li gora hikmên di wê bimeşin û bêemriya wê me kin; heta ko hon bigehin rehm û piyariya Xwedê.

156-We goti bû: Tewrat û Incîla ko ji cuhî û filan re dahatiye bi zimanine biyanî bûn, û me ne dikarî bû wan seh bikin; heta ko hon dîsa wilo me bêjin, me Quran bi zimanê we ê erebî nazil kiriye.

157-Da ko hon me bêjin, heke ji me re kitêbek nazil bibiwa, me ji wan bêtir xeyreta rastiyê bikişandana; ji we re, (xelkê Mekê;) bi zimanê we ê erebî, Quran dahatiye; hikmên Quranê riya rastî û rehmetê pêş we dikin; ma ji mirovên ko rûyê xwe ji hikmên Quranê badidin û derew bi alî wan ve didin, zalimtir kî ne? Emê yên ko dest ji ayetên me dikişînin û bêemriya me dikin, bi ezabekî giran biêşînin.

158-Ma xelkê Mekê çavnêriya çi tiştî dikarin bikin? hatina melyaketê ko rûhê wan wê bistîne; an ji aliyê Xudanê te emrê êşandin û perîşaniya wan da tê; an ne nîşanên dawiya cihanê eşkere bibin; mîna hilatina rojê ji rojavayê! Yên ko baweriya xwe ne anînè, li gora emrê Xwedê ne meşiyane, dîn û dinya xwe winda kirine û piştî aşikarbûna delêletên xelaseka dinê, heke baweriya xwe tînin; divê ew bizanin ko qencî û baweriya wan êdî bi kêrî wan nayê. Bêje: hon di hêviyê de bimînin û binêrin; em jî di hêviyê de ne.

159-Tu, xema peyayên ko li ser dînê xwe bêtifaqî kirine û ji xwe re rêke din bijartin, me xwe; qencî û xirabiya karê wan, di destê Xwedê de ye; Xwedê daxwaz û qerara xwe, wê şanî wan bide.

160-Yê ko qencî kiriye, jê re deh car bêtir qencî heye; û yê ko xirabî kiriye, bi qasî vê xirabiyê, dê bête êşandin, ne jê kêmtir û ne jî jê zêdetir, û di heqê wan de, zilm nayê kirin.

161-Bêje: Xudanê min, ez kirim ser riya rastiyê.

162-Xwedê ez kirim ser dînê miletê Brahîm ê pak û qaim; Brahîm tu kesî, ne kiri bû hevber û hempayê Xwedê.

163-Bêje: nimêj, qurban, ayîn, jiyîn û mirina min yên Xwedê ne; destê wî de ne, yê ko Xudanê erd û ezmana ye. Hevber û hempayê wî nîne; û bi emrê wî, ez bû me misilmanê pêşîn.

164-Bêje: Ma çawan ez dikarim dil bikim û ji Xwedê pê ve, yê ko Xudanê her tiştî ye; xudayek bixwazim? Kedê her nefsekî jê re ye, û tu kes barê yekî din hilnagire; honê di roja piştdawiyê de; wê vegerin ba Xudanê xwe; û ew li ser tiştên ko we pê bi ya hev û du ne dikir, hikmê xwe ê bide.

165-Û wî ye ko hon danîne dewsa nijadên borî, û mertebeyên hinên ji we, ji yên din bilindtir kiriye, û bi nîmeta ko da bû we; hon diceribandin; binêre, Xudanê te gunehkaran lez û bez diêşîne; û di gunehên mirovên qenc dibore û wan digihîne rehm û piyariya xwe.

# Alî Xwarza

Wardîana şewitî, xweş Wardîana,
Bazîdiyê gundê di filana,
Çema Bişîriyê bi mêrgan û çîmana,
Kendê Bazîdê cih nijdan û celaliyana.
Çi dema Hemzê konê di reş lê vedana,
Digerînit li koçkan û dîwana.
Sibeyekî, Hemzê serê xwe li ber konê di reş dihilînî,
Dûrbînê li ber çavê xwe di gerînî,
Tewqa siwarekî li binê mala wê dibînî,
Û ewî suwarî bi Îsivê Gozalê dişebînî.
Gotî: Temo, lo lawo! Egîdo, lo lawo!
Dê tu lez ke, bilezîne,
Xwe bi extexanê re bigihîne.
Kûçek Stenbolê ji extexanê biderîne,
Zîn bi çar qayîşa li pişta kûçek Stenbolê bişidîne,
Li ber qerpûza zînî biçikiline ortek û karzûna,
Û xwe di binya mala re bigehîne.
Siloxdana vî suwarî ji min re bîne.
Heke siwarê me xuya bit, bêje:
«Babê min Hemzê gelek selamê û kelamê qedîm li ba te kirine»,
Û bêje: «Hal û Hewalêd qaçaxêd me li Zozanê jorî çi ne?»
Heke siwarê celalîya bit: Malêd me dû cilpa ne».
Ditirsim vê sibeyê talanekî ji xwe re bikişîne.
Tamê lez kirî lezandi ye,
Kûçek Stembolê ji extexanê deranti ye.
Zîn bi çar qayîşa li piştê şidandiye,
Pê xwe li rikêba avêti ye,
Xwe li binîyê mala re gihandi ye,
Berê xwe dayî. Ewî siwarî Isiyê Gozalê bi eynî ye.
Gazî kirê: Îsivo, lo, lawo!
Gava çavê min bi çavê te keti ye,
Rayê pişta min qeti ye;
Kezeba dilê min heli ye.
Ji min re bêje: «Hal û hewalê di qaçaxêd me li zozanê jorî çi ye?»
Wey la li min diranê!
Îsivî gotê: Temo lo, lawo!
Şikira mîrê mezin be
Nanê me biriye be,
Dewê me qeliye be,
Haşiya konê me sot be:
Navê qaçariyê li mala Şêrê, li darê dinê qet tu ne be!
Şevêdî na şevadî, Emerê Yûzbaşî digel Gidî babê bênbaşî,
Mixoyê Gozalê tabûrekî eskerî enetolê bi ser bira alêd me girtî ye.
Bîst û pênc kurî law destê wan bi darê kelemçê da ye;
Û berê wan da ye Erziroma rengîne.
Behsê kuştina wan heye,
Û berdana wan qet tu nîne.
Gava Temê wa bihistiye,
Calabê kûçek Stembolê zivirandiye,
Qesta kona mezin kiriye,
Ji babê xwe re gotiye:
Erê, babo, hatina vi siwarî bê oxirî ye;
Û ewî suwarî Îsivê Gozalê bi eynî ye.

# Kalo Rebeno.

*Kalo, rebeno, Zozan bişewitin;*
*Belê ho ê Kalo, Zozan wa bi ci ye?*
*Hezar û heft sed siwarê di Zîlan û Heydera xalib Axa kirin karê xwe ne.*
*Diçin, xirabkin, xirab-Zila şewitî û Mehê, kekê Gewrê dikujin siwarê zerdekê.*
*Delo, ho ê Kalo da lolo; xwarzî te ye.*
*Kalo rebeno, zozan bişewitin;*
*Delo, ho ê Kalo.zozan î şîn e.*
*Hezar û heft sed siwarê di zîlan û Heydera kirin û kom kirine:*
*Diçin, xirab bikin, xirba-Zila şewitî û Mehê, kekê Gewrê, dikujin siwarê zerdekê.*
*Xeyret û namûs li dor te nîne.*
*Delo, ho ê Kalo da lolo;*
*Kalo, rebeno, zozan dişewitin;*
*Belê ho ê Kala, Zozan bi semaq e.*
*Hezar û heft sed siwarê di Zîlan û Heydera xalib Axa kirin bi tifaq e.*
*Diçin, xira bikin, xirba-Zila şewitî û Mehê kekê Gewrê, bikujin siwarê zerdekê.*
*Bira Elah û îman Elah, heko tu neçî, arî Mehê, kekê Gewrê, ne kî*
*Ez dê xwe ji te berdim bi telaq e.*
*Delolo, Kalo;;..*

# Heso Rebeno.

*Heso Goyîno, bayê sibê li min ra bû,*
*Şehid şihûdê Hesê Balo gelek hebû.*
*Li nîv meydanê Çirp li ber axayê xwe peye bû.*
*Rabe, siwar be, bila malkekî mîrata bê,*
*Da nebêjin Koçka wî mîrata Helîliê bilav na bê.*
*Kî digo Heso êkane çêkir,*
*Kibara sibê, zînê hemdanî lê kir.*
*Şehde û şihûdê Hesoyê Balo gelek hene.*
*Serê xwe bi goriya serê axê kir.*
*Ezê bi gire Mehmedana şewitî ketim.*
*Ji giranî gir gûnik e.*
*Ferho gazî dike: Bra ka namûsa te kirî.*
*Bra min wê çawa namûs na kirî,*
*Min wê bi şelîta kona hesirandî.*
*Eza rabume ser rikêbekî.*
*Min wê rima li darzê golinçê da.*
*Min got: Eve heyfa Hesê Balo, qumendarê ser bilûka.*
*Ezê giranî ketim, giranî û pey da.*
*Ferho got: Bra, ka namûsa te kirî.*
*Çawa wê Bişêrê Çeto nîvê siwara ferîqa kirî.*
*Min wê li şelîta kona asê kirî.*
*Ezê rabim ser rikêbekî,*
*Min wê rimekî li derza qolincê da.*
*Min got: Eve heyfa Hesê Balo, xulamê banê min rebenê,*
*Xulamê ji xulaman î zêda.*

# Koçer û Dostkî

*Ew kûrbîla li nav deştê ve.*
*Çepelê Alî Gendal û Alî Fatih li dengê rê ve.*
*Alî Gendal dikite Alî Fateh:*
*Keko, bra, ne rabin li ber çepera.*
*Xwedê berxê nêr wê danî bo kêrê ve.*
*Deşta Sêcî bi gij û ber e.*
*Tifaqa Sîso Alî Mawîzer e.*
*Sed heyf û mixab in: Sîso kuştî li ber çepera*
*Deşta sêcî bi nêhêl e.*
*Tifaqa Sîso Alî karxana ya têl bi têl e.*
*Sîsoyê Alî sê denga gazî dikit:*
*Erê, babo, Doskiya revî, min ne hêla.*
*Sed heyf û mixab in: Sîso kuştî hêj çil e.*

## Strana Omeriya

# Smaîlê Xelîl

*De.. lo, lo, gidî lo Smaîlo heyran, Talat bişewite bi mêrg û kanî; lê diçêre mehîn û ciwanî; şevê nîvê şeva Mihemedê gurî, şêwir û mişêwirê kuştina Smaîlê Xelîl, li mala Xengo danî; şand metika xwe Helikê anî; li ser qesra Smaîl, sekinî Helikê; û teşiya xwe deristî; qerara nêrdewanê girt, ji Mihemedê gurî re anî; Mihemedê gurî qerara nerdewanê bir û çûye çiyayê Mazî; nêrdewanek çêkir û bi xwe re anî: ji nîvê şevê û pê ve, li ber qesra Smaîlê Xelîl danî; bi nêrdewanê ve, hilkişiya ser qesra Smaîlê Xelîl; demançe qeredax ji qibûrê deranî; û li ser qehfê Smaîlê Xelîl danî; heyfa kevin û nuh, bi destê xwe hilanî....*

*Lawê gurî, weleh, ez te na kim; tu bi şêx bî, ez te tewaf na kim; tu bi gu bî, ez te di ber serê xwe da na kim; mi go: ezê serê sibehê; herim Smaîlê Xelîl, ji xew rakim; ezê rahêjim misîn û leganê; ezê avê li desta kim; ezê bişînim Mûsil û Kerkûkê, ebakê bînim, di nav mila kim; bişînim Sileymaniyê xencerkê bînim, di ber ra kim; mi go qey, ezê Smaîlê Xelîl li Talatê bi zava kim; bi Zavayê sê roja kim; mi go Smaîlê Xelîl xortekî gelekî lê hêja ye; ezê li Talatê bi axa kim; ezê bi axayê Omeriya kim; min ni zanî bû, ko ezê rahêjim laşê Smaîlê Xelîl, di mezelê binya mala kim; Smaîlo Xeyra, bejna Smaîlê min zirav e, mîna tayê ketê, şîn dibû di Talatê, li milê xetê; mi dî laşê smaîlê xelîl, danîne gasîna dêrê, li ber mizgeftê; giriya kafir û misilmana bi halê min û te... tê*

*De... lo, lo.. gidî... lo Smaîlo; bejin ziravo, nav qendîlo, Smaîlo heyran, ji Talatê û heya Sîtê; xiyala xwe didimê; berf û baran bi kulî tê; diya smaîlê xelîl ji aliyê Midyatê, ji gilî tê; laşê smaîlê xelîl danîne gasîna dêrê, ber miscidê.... giriya kafir û misilmana bi halê min û wî tê; qesra smaîlê xelîl bilind e, li Talatê sera, sera; lê dinerim li kuleka, li şibaqe, li pencera; Mihemedê gurî, kero ji wan kera, çawa te laşê smaîlê da ber xencera!....*

Sebriyê Serhedî

## EZÊ LI SERSIMILÊ

*Ezê li ser similê ketim, mehalê seran û bihar e.*
*Li ezmana qîrîna we, mîratê, di Tiyara.*
*Li erdê qîrînê di Exsîra û nalînê di brîndara.*
*similê xopan we bi gir e.*
*Mîrata Tiyarê hat ser de gira.*
*Û eşîret hatin û çarnikarê girgir e.*
*Heyf û mixabinî destê Tiyariya û Baziya.*
*Girtine û dana ber xencera.*
*Mîrata similê we bi nuwal e,*
*Û çarnikarêd wî esker girtin bi trombêla.*
*U gazî eşîreta kirin: Werine mala*
*Û ji xwe re bibin erz û eyala.*
*Simila rengîn li erdê rast e;*
*Esker destê lawê Tiarîya girtin*
*Û ser xwînê hêlemist e.*



4ème ANNEE LUNDI 27 MAI 1946 NUMÉRO 73

# LE JOUR NOUVEAU

Direction : Beyrouth Wakfs Tabet
Place des Canons Tél. : 74-01 et 81-41

QUOTIDIEN KURDE
Directeur-Propriétaire : EMIR Dr. KAMURAN AALI BEDIR KHAN

Le Numéro 25 P.L.S. - Abonnement :
Liban-Syrie 25 L.L.S. Etranger 4 L. Stg.

## Le Roi du Kurdistan
## roman épique kurde

*(Suite)*

Richard, lui, ne se rendait pas compte de l'état où il se trouvait.

Ses blessures lui faisaient perdre la mémoire des jours. Il ne pourrait pas prendre part à la bataille et ignorerait la satisfaction de contribuer à délivrer sa bien aimée. Après un nouveau pansement, il avait essayé de se faire hisser sur un cheval et de se lancer attaché à lui ; mais il avait dû y renoncer. La force avait trompé son héroïsme. Une atroce blessure à la poitrine, et d'autres à l'épaule, à la jambe droite et au front l'avaient épuisé. Et le dévouement de son corps n'y pouvait rien. Il considérait qu'en somme il avait abordé ce pays pour apporter la plus belle fille du monde, sa propre fiancée, à un ennemi ! Il se demandait si le malheur avait été créé pour lui, personnellement. Il trouvait un nouveau motif de souffrances dans les propos dont l'envoyé de Shêrzad avait accompagné la remise des présents royaux : le roi kurde le considérait comme un vieux soldat et prenait la princesse pour sa fille !...

Entre son malheur et sa souffrance, il se demandait pourquoi elle n'avait pas dit à son geôlier qu'elle était fiancée à Richard ? La vipère de la jalousie rôdait-elle autour de lui ?

Une fièvre délirante empêchait le blessé de se rendre exactement compte de ses propres pensées. Mais un moment de lucidité lui fit penser que Kegan avait dû ne pas parler des blessures du chef des armées afin de ne pas encourager les Kurdes. Et elle s'était fait passer pour fille d'un vieux soldat pour devenir plus facilement rançonnable.

En cheminant dans le ravin de ses pensées, Richard sommeillait, puis se réveillait, et sommeillait à nouveau.

Dans ses songes, il voyait Kegan sous les voûtes d'un palais, la prenait dans ses bras, supportait son mépris, courrait de grands dangers et, bondissant, cherchait son sabre.

Puis, il l'imaginait dans un beau et lointain pays, en un jardin harmonieux. Devant une pièce d'eau en marbre rose de blancs pigeons volaient. Deux enfants se tenaient auprès d'elle et elle voyait un jeune homme s'approcher. Cette image lui arracha dans son sommeil, de tels cris, que les sentinelles accoururent sous sa tente...

Il retombait ensuite, abattu par ses rêves, et s'assoupissait. Une lueur tombait de son visage, mêlée d'un filet de sang. Sa blessure, sous les lueurs des torches que tenaient les sentinelles, donnait à son noble visage de soldat une grandeur impressionnante.

Un rocher, s'il l'eut vu, aurait commencé de sentir.

* * *

Le même soir, les premiers escadrons et les premiers fantassins envoyés en renfort de l'intérieur, se présentèrent au campement kurde.

Le moral de l'armée égalait l'enthousiasme du camp. La nouvelle donnée par le prisonnier occidental, s'était répandue : le commandant en chef des Croisés avait été blessé et c'était la fille du roi que Shêrzad avait fait captive.

Des hommes s'écrièrent :

— Notre roi a su choisir l'occasion de blesser le chef ennemi et d'enlever la fille du souverain étranger.

— Oh ! le valeureux roi ! Son cœur a deviné le moment de décider. Sa main, de se porter à la garde de son épée.

Les kurdes, toujours épris de leur roi, aimaient encore davantage Shêrzad que ses prédécesseurs, à cause de sa jeunesse malheureuse et parce qu'il avait perdu sa fiancée.

Dans la nuit calme, les collines avaient abandonné leur vêtement de lumière. Des flambeaux brillaient sous les tentes. Une animation vivifiait le camp. Des hommes chantonnaient et des flûtes préludaient à des chants montagnards. Des groupes dansaient. On entendait par endroits criailler les sabres et aiguiser des poignards. On faisait venir l'âme de l'acier à ses lèvres. Des silhouettes de soldats passaient sur le profil des feux en flamme ou déjà en braises. Des chevaux maigres et agiles comme des gazelles, mâchaient leur orge et dressaient leurs oreilles vers le vent frais qui leur apportait du mont Arara la senteur familière des prairies.

Suivant un plan concerté, à une heure fixe, les troupes gagnèrent des postes précisément assignés. Des tentes à peine éclairées étaient démontées. Des flutes qui avaient entamé un chant, devenaient muettes. Les convois descendus des pentes, s'installaient dans les ravins et un grouillement d'hommes dans les rochers frapait l'imagination. Des porteurs de torches passaient, dont les feux projetaient, agrandies considérablement, les ombres des cavaliers, contre la montagne montrant bien que s'ils l'eussent voulu, ces hommes auraient couvert de leur corps la terre entière.

Au milieu de la nuit, le vent souffla. Ses poumons semblaient emplir une longue trompe. Montagnes, terres, rocs, gazons qui, demain, allaient se colorer de sang humain, haletaient.

* * *

Le roi traitait sa prisonnière en égale. Shêrzad était en réalité le captif de cette jeune fille et tout ce que la vie pouvait apporter de bonheur et de joie demeurait lié, pour lui, à la personne de Kegan.

Il sentait que le cours d'eau impétueux, de son âme, après avoir traversé des déserts, entrait maintenant dans un terrain fertile. Doux rêve suivi hélas ! de la réalité cruelle : la guerre allait commencer.

Et il pensait :

— Comment pourrai-je gagner le cœur et espérer l'amour de cette jeune fille, si elle assiste à des événements sanglants, elle qui demeure si attachée à l'armée des Croisés ?

Certes, elle se montrait reconnaissante de son attitude, estimant que celle-ci découlait de la noblesse naturelle de ses sentiments. Par contre rien, chez elle, ne laissait présager un espoir pour un homme amoureux.

Sur le visage calme mais triste de Kégan, des ombres amères passaient. Le roi sentit le moment venu d'éloigner cette jeune fille du lieu où allaient se dérouler des scènes de carnage. Kégan ne devait pas voir la tuerie sous peine, alors, de ne plus pouvoir l'oublier, car ses yeux n'étaient pas des miroirs où les images se reflètent et s'effacent, mais bien son âme elle-même.

Shêrzad pria Kegan de passer la nuit sous la tente qu'il lui avait fait dresser. Elle accepta de bonne grâce, ce qui réjouit le monarque qui y vit le signe de la réalisation possible de ses espoirs. Il l'avait éloignée du camp non seulement pour la soustraire à ce qui se produirait, mais aussi pour supprimer en elle le souvenir de ce qu'elle avait déjà vu.

Convaincu que la paix reviendrait, il envisageait de recevoir le père de Kégan et de lui rendre les grands honneurs. Il pensait qu'un guerrier qui aurait fait tout son devoir pourrait fort bien, une fois la paix conclue, accepter l'hospitalité de ses anciens ennemis. Le roi occidental verrait qu'un kurde apporte le même zèle à recevoir un hôte qu'à combattre un adversaire.

Il se sépara de Kegan et la fit escorter par trente cavaliers sous le commandement de ses deux jeunes neveux. A ceux-ci, il ordonna d'obéir à tout ce que commanderait Kegan pour ce qui concernerait l'Orient. Il leur précisa :

— Je ne prévois guère que Kegan ait un désir. Cependant, dans le cas où elle vous en manifesterait un, répondez-lui que vous en conférere avec moi.

Le roi s'apprêtait à monter à cheval quand des cavaliers, venus du prochain front se présentèrent. Ils apportaient la nouvelle de l'imminence des hostilités. Shêrzad se réjouit de la décision d'avoir éloigné Kegan et de l'avoir dirigée sur l'intérieur, vers sa capitale de Pichder.

* * *

Aussitôt arrivé au camp, il examina les préparatifs et salua les commandants des forces fraîchement arrivées.

Il se retira pour prendre du repos et, à la veille d'une bataille qui allait coûter tant de vies humaines, il s'endormit calmement, pensant aux paroles de Kegan.

Le matin trouva le roi, ses soldats et ses cavaliers, chauds comme le visage du soleil et brillants comme la lame des sabres.

Les Kurdes allaient affronter un ennemi résolu à progresser ou à mourir. Les premiers engagements justifièrent les renseignements reçus.

Sherzad ne se rendait pas compte que les Croisés avaient soudain changé de motif de guerre, ni que maintenant, ils allaient guerroyer pour sauver Kegan, celle qu'il considérait, lui, comme la fille d'un vieux soldat.

*(à suivre)*

